# HIN JI FEZÎLETÊN QUR'ANÊ

Qur'an, kelamê Xwedê ye. Fezîleta wê li ser gotinên din, mîna fezîleta Xwedê li ser mexlûqê wî ye. Xwendina wê, ji her tiştê ku ziman pê biaxivê xêrtir û fezîletir e.

**Hinek ji xêrên hînbûn, hînkirin û Xwendina Qur'anê:**

**Xêra hînkirina Qur'anê**: "Pêxember (Selat û selam li ser bin) wiha gotiye: "***Baştirînê we, ew kesa ye ku Qur'anê fêr bibe û bide fêrkirin***" *Buxarî*. Ew kesê ku ayetekê ji Qur'anê fêr bikê; çiqas ew ayet bê xwendin jê re xêr hasil dibe.

**Xêra xwendina Qur'anê:** Pêxember (Selat û selam li ser bin) wiha gotiye: "***Ew kesê herfekê ji kitêba Xwedê bixwîne, bi wê jê re xêrek heye û her xêr jî bi deh qatê xwe ye***." **Tirmizî**.

**Îbn Receb (*rehma Xwedê lê be*) dibêje:** Zêdehiya xêran bi deh qatê xwe ji her xêrê re pêdivî dibe. Ew ayet vê rastiyê nişan dide; "***Çi kesê bi xêrekê were jê re deh qatê wê heye***." Heçî ku zêdehiya li ser deh qatan e, ew ji bo wan kesa ye ku Xwedê zêdahiyê jê re bivê. Carinan zêdahî heyanî heftsed (700) qatî xwe û hê pirtir zêde dibe. Sebebê vê jî, piştî kerema Xwedê tirsa dil, tedebbur û têgihiştina wê ye.

**Fezîleta xwendina Quranê, jiberkirin û serbestiya xwendina wê:** Pêxember (Selat û selam li ser bin) wiha gotiya: "***Mînaka wî kesê ku Qur'anê dixwîne û ew jê re mahir e; ew digel melaîketên birûmet ên baş in. Mînaka wî kesê ku Qur'anê dixwine û xwendina wê jê re giran tê; jê re du xêr hene. Pêxember gotiye: Ji xwendevanê Qur'anê re tê gotin: Bixwîne, bilind bibe û dîsa bixwîne her wekî te li dinyayê dixwend, birastî cihê te li cem ayeta dawî ye ya ku te ew dixwend***." *Tirmizî*

**Îmamê Xettabî gotiya:** Di gotinên pêşiyan de hatiye ku hejmara ayetên Qur'anê li gorî dereceyên cennetê ne. vêca ji xwendevanî re tê gotin: di derencan de ber jor here bi qederê ayetê te jê xwendi ye. Ew kesê Qur'an xetim kiribe, ew li axretê raserî dereca herî bilind dibe. Ew kesê cuzek jê xwendibe, bilidahiya wî bi qasî cuzekê ye, naxwe dawîneke xêrê li cem dawîneka xwendinê ye.

**Xêra wî kesê ku zaroka xwe fêrî Qur'anê bike:** Pêxember wiha gotiye: "***Ew kesê Quranê bixwîne, bide xwendin û pê emel bike; dêûbavên wî roja qiyametê bi taceke ji nûrê têne tackirin, şewqa wê mîna şewqa rôjê ye û dêûbavê wî bi du xişran têne xemlandin ku dinya di buhayê wan nayê. Vêca dêûbav dibêjin: Em ji bo çi ev cil û berk li me kirin? Ji wan re tê gotin: Ev bi sebeba ku zarokê we Qur'an xwendine.***" *El-Hakim*

**Li axretê mehderiya Qur'anê ji bo xwendevanê xwe:** Pêxember dibêje: "***Quranê bixwînin. Lewra; ew roja qiyametê ji xwendevanê xwe re mehderiyê dike***." *Muslim*

**Pêxember dibêje:** "***Rojî û Qur'an roja qiyametê ji mirovan re şefaetê dikin***." **Ahmed û Hakim**

**Xêra kombûna ji bo xwendin û hevhînkirina wê:** Pêxember dibêje: "***Çi dema qewmek di mizgeftekê ji mizgeftên Xwedê li hev kom bibin; tê de kitêba Xwedê bixwînin û di navbera xwe de hev hîn bikin, her aramî bi ser wan de tê, rehmet***

***wan di nav xwe digre, melaîket wan diparêzên û Xwedê salixên wan ji melaîketên li cem xwe re dide.*** ” **Muslim**

**Hinek ji ahkamên xwendina Quranê**

**Rêz û toreyên xwendina Qur'anê:** Îbn Kesîr hin rêz û tore gotine, ji wan: lazim e bêdestmêj dest nede Qur'anê û wê nexwêne, lazim e berî xwendinê devê xwe miswak bike, cilê xwe yê xweşik li xwe bike, berê xwe bide qiblê, dema bawişk hatiyê xwendina xwe rawestinê, ku ne ji bo hewcedariyekê bê lazim e xwendina xwe bi axeftinê nebirê, pêwist e di hişê xwe bigre, pêdivî ye ku li ser ayetê xêrê bisekine vêca ji xwe re bixwaze û li ser ayetên ezabê jî raweste; xwe jê bi Xwedê biparêze, lazim e mushefê vekiri nedeyne û tiştekî nedayinê ser, hinek ji wan di xwendinê de dengê xwe bi ser yên din neêxin û pêdivîye di sûk û cihê bixirecir de nexwênin.

**Şeklê xwendina wê:**

-Di nimêjê de xwendina Qur'anê û zikr nayê hesibandin heyanî ku pê nepeyivê, bi rewşekî wisa ku ew dengê xwe seh bike; bêyî ku teşwîşê li ser xelkê çêkê.

-Lazim e di xwendina qur'anê ecele nekê. Ji Enes pirsîn ka pêxember çawa xwendiye? Enes got: “Pêxember herfê meddê dirêj dikir; dema “بسم الله الرحمن الرحيم” dixwend; بسم الله dirêj dikir, الرحمن dirêj dikir û الرحيم dirêj dikir. *Buxarî*

**Miqdarê xwendina Qur'anê:** Sehabiyên Pêxember her roj hinek ji Qur'anê dixwendin. Sehabiyan heftiyê carekê Qur'an xetimdikirin; belkî xetimkirina Qur'anê kêmî sê rojan hatiye nehîkirin.

**Xwendina ji ezberî:** Dema xwendevan Qur'anê ji ber dixwîne; eger ku tedebbur, tefekkur, rawestîna dil û çav li serê ji ya ku di mushefê de dixwîne zêdetir be, wê hingê; xwendina ji ezber xêrtir e. Na; eger jê re wekhev be, xwendina di mushefê de bixêrtir e.

**Wesiyyet (qewêtiyek) e:** Birayê min! Li ser ku tu wextê xwe di xwendina Qur'anê de derbas bikê rijd be. Ji bo xwe rojane miqdarekî ji xwendina Qur'anê bigre, rewş çi dibe bibe wê terka meke. Xwendineke hindik lê berdewamî ji xwendineke pir ku ne berdewamî be xêrtir e . Eger tu ji xwendinê xafil mayî yan tu razayî û te nexwend; di roja din de qeza bike. Pêxember dibêje: **“*Çi kesê raze û hizba xwe yan hinekî jê nexwêne, vêca bila di navbera nimêja sibehê û nimêja nîvro de bixwîne; herwekî wî êvarî xwendiye jê re tê nivîsandin.*”** **Muslim** Nebe ji wan kesê ku Qur'anê terk dikin û wê jibîr dikin, bi kijan şeklî dibe; mîna ku xwendina wê terk bike, yan tedebura wê, yan emelê pê û yan jî şîfaxwestina pê terk bike.

# SÛREYÊ FATÎHEYÊ

**Sûreyê Fatîheyê**, li Mekkê nazil bûye. Heft ayet in.

Ev sûre ji ber ku Sûreyê Qur'anê yê yekem e û Qur'ana pîroz pê tê destpêkirin jê re “El-Fatîhe” yanî destpêk tê gotin. Herwiha, ji bilî vî navî hinek navên wî yên din jî hene ku ev in: Ummulkîtab (Maka kitêbê), Şifa (derman), Esasul-Qur'an (Bingeha Qur'anê), Kenz (xezîne) û El-Hemd.

**Hinek ji fezîletên Sûreyê Fatîheyê:** Di bara fezîlet û giringiya vî sûreyî de, pêxemberê Xwedê (*selat û selama Xwedê li ser bê*) wiha gotiye: “Kî nimêjekê bike, vêca tê de sûreyê Fatîheyê nexwîne nimêja wî betal e”. Ebu Seî’d kurê Mu‘ella radighîne ku pêxember (*selat û selama Xwedê li ser bê*) jê re gotiye: “Beriya ku tu ji mizgeftê derkevî ez ê te hînî sûreyê herî mezin ji yê Qur’anê bikim.” Ebû Se‘îd dibêjê: Pêxember bi destê min girt. Çi gava kir ku ji mizgeftê derkeve, min jê re got: Hey resûlê Xwedê! Te gotibû: Ez ê te fêrî sûreyê herî mezin ji yê Qur’anê bikim. Pêxember got: “Belê. Ew sûreyê El-Hemdulillahî ye. Ew, heft ayetên Qur’ana Mezin e ya ku ji bo min hatiye hinartin, ew ayetên ku her tim têne xwendin.”

(1) Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.
(2) Hemd (pesn û spasî) ji Xwedê re be ku ew perwerdegarê ‘alemê ye.
(3) (Ew Xwedayê ku) Rehman e (li dinyayê merhemetê li her kesî dike) û Rehîm e (li axretê rehma xwe bes li mumînan dike, wan dibe bihiştê).
(4) (Ew Xwedayê ku) Xwediyê roja hesabdîtin û cizadanê ye.
(5) (Xwedayê min!) Em her ji bo te tenê îbadetê dikin û em her ji te arîkariyê dixwazin.
(6) (Xwedayê min!) Li ser riya rast û durist me rasterê bike (me pê serwext bike û li serê bihêle)…
(7) Li ser riya wan kesên ku te qencî û dilşadî daye wan (rasterê bike); ne li ser riya wan kesên ku xezeb li wan bûye û ne li ser riya wan kesên ku riya heq winda kirine.

Amîn! (Ya Rebî! Du’ayê me qebûl bike.)

**Hemd:** *Wesfa herî rind, senaya pir, spasiya kamil û salixên bêdawîn, tenha xas û babetê Xwedê ne. Lewra hemû rindî lê vedigere. Her sena û pesnên rind ji Xwedê tenê re ye. Lewra yê ku tevekê alemê li hev radigre û ji pêşiya wan heta bi paşiya wan, wan perwerde û*




*xwedî dike û ya ku qencî û rizgariya wan tê de ye hînî wan dike her ew e. Ji bo rênîşandana wî hemd jê re be û ji bo hemû ni ‘metên wî yên xuyayî û nihênî şukir jê re be!*

**Rehman**: Yê ku hemû ni ‘metan dide, bêsînor û bêdawîn qenciyê li bende û mexlûqên xwe dike. Ev wesfê şîrîn xasê bi Xwedê ve ye û qet jê cuda nabe.

**Rehîm**: Yê ku wesfê rehmetê jê re sabit e.

**Yewmiddîn**: **Yewm**, roj e. **Dîn,** Maneya wê ya ferhengî; hesab e, ceza ye, ango xelat û celat e. Ji Roja Dîn mebest; roja qiyametê ye ku Xwedê dê hemû bende û mexlûqên xwe, li gorî kirin û karên wan ceza bike. Heke kiryarên wan qencî bin dê xelat û padaşê bide wan û heke kiryarên wan neqencî bin -ji bilî yên ku li wan bibore û tobeya wan qebûl bike- dê wan ceza û seza bike. Peyva **Dîn** di hedîsa şerîf de jî bi maneya hesabê bi kar hatiye. Pêxemberê Xwedê wisa ferman kiriye: ***“El-keyyisu men dane nefseh”*** aqilmend ew kes e ku hesabê nefsa xwe bide dîtin. Ev dana hesabê exlaqekî Îslamî ye ku di bara wî de Umer (*Xwedê jê razî be*) gotiye: “*Beriya hesabê we bête dîtin hûn xwe bikêşin hesabê. Beriya ‘emelê we bête kêşandin hûn‘ hûn emelê xwe bikêşin û xwe ji rapêşiya mezin a li cem wî Xwedayê ku tiştek li berê veşartî namîne, amade bikin.*”

**Ew ên ku Te ni ‘met li wan kirî;** pêxember, şehîd, yên rast û salih in.

**Ew kesên ku xezeb li wan bûyî:** Ew kesên ku heqiyê nas dikin lê qebûl nakin; mîna cihû û yên wekî wan.

**Ew kesên ku jirêderketî ne:** Ên ku rêya heq hîç nas nekirine, ji lew ketine rêya çewt û şaş; mîna fileh û ên wekî wan.

# SÛREYÊ MUCADELE

Sûreyê Mucadele 22 (bîst û du) ayet e û li Medînê daketiye. Navê sûre ji ayeta pêşîn hatiye ku tê de bêjeya Tucadilû derbas bûye û bi mehneya ‘têdikoşe’ ye ku koka wê mucadele ye.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

1 (Resûlê min!) Bi rastî Xwedê gotina wê jina ku der barê mêrê xwe de bi te re giftûgo dike û giliyê (derdê) xwe digihîne Xwedê helbet seh kir. Xwedê, hevpeyvîna we seh dike û bi rastî jî Xwedê bihîzer e, bîner e.

2 Ji we, ew kesên ku bi jinên xwe re zîharê dikin (ku ji jinên xwe re dibêjin: Tu mîna dayika min li min heram bî), jinên wan ne dayikên wan in. Dayikên wan tenê ew ên ku ew welidandine. Bi rastî ew (bi zîharê) gotineke derew û dûrî heqiyê dibêjin. Bêguman Xwedê lêbuhêr û gunehveşêr e.

3 Ew mêrên ku bi jinên xwe re zîharê dikin (ji jinên xwe re dibêjin ‘Mîna diya min tu li min heram bî’) û paşê ji gotina xwe vegerin (cezayê wan) beriya ew biçin nivîna hev, azadkirina koleyekî (bawermend) e. Ev şîreta Xwedê ye ku li we hatiye kirin. Xwedê, ji kirinên we haydar e.

4 Vêca ew kesê (ji bo azadkirinê) kole bi dest nekevê, êdî beriya ew biçe nivîna xwe, ew ê du mehan li ser hev rojî bigire. Kesê nikaribe (du mehan rojî bigire) bila xwarinê bide şêst feqîran. Ev (kefaretê zîharê ye), ji bo ku hûn baweriyê bi Xwedê û pêxemberê Wî bînin. Ha ev tixûb û hukmên Xwedê ne. Ji bo yên kafir jî ezabekî dijwar heye.

ترتيبها ٥٨ — سورة المجادلة — آياتها ٢٢

بسم الله الرحمن الرحيم

قد سمع الله قول التي تجادلك في زوجها وتشتكي إلى الله
والله يسمع تحاوركما إن الله سميع بصير ١ الذين يظهرون
منكم من نسائهم ما هن أمهاتهم إن أمهاتهم إلا التي
ولدنهم وإنهم ليقولون منكرا من القول وزورا وإن
الله لعفو غفور ٢ والذين يظهرون من نسائهم ثم يعودون
لما قالوا فتحرير رقبة من قبل أن يتماسا ذلكم توعظون
به والله بما تعملون خبير ٣ فمن لم يجد فصيام شهرين
متتابعين من قبل أن يتماسا فمن لم يستطع فإطعام ستين
مسكينا ذلك لتؤمنوا بالله ورسوله وتلك حدود الله
وللكفرين عذاب أليم ٤ إن الذين يحادون الله ورسوله كبتوا
كما كبت الذين من قبلهم وقد أنزلنا ءايت بينت وللكفرين
عذاب مهين ٥ يوم يبعثهم الله جميعا فينبئهم بما
عملوا أحصه الله ونسوه والله على كل شيء شهيد ٦

5 Bi rastî ew ên ku dijatî û neyartiya Xwedê û pêxemberê Wî dikin, ka çawa yên beriya wan rezîl û riswa bûne, ew jî dê mîna wan rezîl û riswa bibin. Bi rastî jî me nîşanên ronak û aşkera hinartine. Ji bo kafiran her ezabekî riswaker heye.

6 Wê roja ku Xwedê tevekî wan vedijîne, vêca çiqas karê wan kirî dê wan pê agahdar bike. Xwedê hemû kirinên wan tomar kirine û wan jî kirinên xwe ji bîr kirine. Xwedê li ser her tiştî çavdêr e.

أَلَمْ تَرَ أَنَّ ٱللَّهَ يَعْلَمُ مَا فِي ٱلسَّمَٰوَٰتِ وَمَا فِي ٱلْأَرْضِ مَا يَكُونُ
مِن نَّجْوَىٰ ثَلَٰثَةٍ إِلَّا هُوَ رَابِعُهُمْ وَلَا خَمْسَةٍ إِلَّا هُوَ سَادِسُهُمْ
وَلَآ أَدْنَىٰ مِن ذَٰلِكَ وَلَآ أَكْثَرَ إِلَّا هُوَ مَعَهُمْ أَيْنَ مَا كَانُوا۟ ثُمَّ يُنَبِّئُهُم
بِمَا عَمِلُوا۟ يَوْمَ ٱلْقِيَٰمَةِ إِنَّ ٱللَّهَ بِكُلِّ شَيْءٍ عَلِيمٌ ﴿٧﴾ أَلَمْ تَرَ إِلَى ٱلَّذِينَ
نُهُوا۟ عَنِ ٱلنَّجْوَىٰ ثُمَّ يَعُودُونَ لِمَا نُهُوا۟ عَنْهُ وَيَتَنَٰجَوْنَ بِٱلْإِثْمِ
وَٱلْعُدْوَٰنِ وَمَعْصِيَتِ ٱلرَّسُولِ وَإِذَا جَآءُوكَ حَيَّوْكَ بِمَا لَمْ يُحَيِّكَ
بِهِ ٱللَّهُ وَيَقُولُونَ فِيٓ أَنفُسِهِمْ لَوْلَا يُعَذِّبُنَا ٱللَّهُ بِمَا نَقُولُ حَسْبُهُمْ
جَهَنَّمُ يَصْلَوْنَهَا فَبِئْسَ ٱلْمَصِيرُ ﴿٨﴾ يَٰٓأَيُّهَا ٱلَّذِينَ ءَامَنُوٓا۟ إِذَا
تَنَٰجَيْتُمْ فَلَا تَتَنَٰجَوْا۟ بِٱلْإِثْمِ وَٱلْعُدْوَٰنِ وَمَعْصِيَتِ ٱلرَّسُولِ وَتَنَٰجَوْا۟
بِٱلْبِرِّ وَٱلتَّقْوَىٰ وَٱتَّقُوا۟ ٱللَّهَ ٱلَّذِيٓ إِلَيْهِ تُحْشَرُونَ ﴿٩﴾ إِنَّمَا ٱلنَّجْوَىٰ
مِنَ ٱلشَّيْطَٰنِ لِيَحْزُنَ ٱلَّذِينَ ءَامَنُوا۟ وَلَيْسَ بِضَآرِّهِمْ شَيْـًٔا
إِلَّا بِإِذْنِ ٱللَّهِ وَعَلَى ٱللَّهِ فَلْيَتَوَكَّلِ ٱلْمُؤْمِنُونَ ﴿١٠﴾ يَٰٓأَيُّهَا ٱلَّذِينَ
ءَامَنُوٓا۟ إِذَا قِيلَ لَكُمْ تَفَسَّحُوا۟ فِي ٱلْمَجَٰلِسِ فَٱفْسَحُوا۟ يَفْسَحِ
ٱللَّهُ لَكُمْ وَإِذَا قِيلَ ٱنشُزُوا۟ فَٱنشُزُوا۟ يَرْفَعِ ٱللَّهُ ٱلَّذِينَ ءَامَنُوا۟
مِنكُمْ وَٱلَّذِينَ أُوتُوا۟ ٱلْعِلْمَ دَرَجَٰتٍ وَٱللَّهُ بِمَا تَعْمَلُونَ خَبِيرٌ ﴿١١﴾

7 Ma tu nabînî, muheqeq çi tiştên li erd û asîmanan hene her Xwedê bi wan dizane? Çi pistepista ku di nav sisiyan de çêbe, ji wan, Xwedê her yê çaran e, ku pênc bin şeşê wan her Xwedê ye. Çi kêmtir û çi zêdetirî van, ew li ku derê dibin bila bibin Xwedê her (bi zanîna xwe) ligel wan e. Paşê roja qiyametê bi kirinên wan dê wan haydar bike. Bi rastî Xwedê bi her tiştî zana ye.

8 Ka ji min re bêje, ma te nedît ew ên ku nehya wan ji pistepistê hatiye kirin (ku ew cihû û munafiq in), piştre li ya ku li wan hatiye qedexekirin vedigerin û di gunehkarî, dijminahî û neguhdariya Pêxamber de pistepistê dikin? Gava ku ew bên cem te, bi silaveke ku Xwedê tu pê silav nekiriye li te silav dikin. Di dilê xwe de jî dibêjin 'De bila Xwedê bi ya ku em dibêjin me bide ezab? Cehenem besî wan e, ew dê biçin wê, ew çi pîsecih e!

9 Gelî yên ku bawerî anîn! Gava ku we bi dizîka di nav xwe de xeber da, bi ya guneh, bi ya neyartî û ya dijraberiya Pêxember xeber nedin. Bi qencî û teqwayê xeber bidin û ji Xwedayê ku hûn dê li ber bêne civandin, bitirsin.

10 Pistepist bes ji şeytên e; da ku bawermend pê xemgîn bibin. Ew bi xwe (şeytan) heta destûra Xwedê nebe nikare tu zerarê bide wan. Vêca bawermend bila her xwe bispêrin Xwedê.

11 Gelî yên ku bawerî anîn! Dema ku ji we re bê gotin; di dîwanên xwe yên civînan de (ji yên ku beşdar dibin re rê vekin û cih) fireh bikin, vêca hûn jî cih fireh bikin, Xwedê jî ji bo we cih fireh dike. Gava ku ji we re bê gotin; ji cihê xwe rabin, vêca hûn jî rabin (da cihê hinekî din çêbe). Xwedê, ew ên ku wan bawerî aniye û yên ku xwedî ilm in, mertebeya wan bilind dike. Xwedê bi kar û kiryarên ku hûn dikin agahdar e.

يَـٰٓأَيُّهَا ٱلَّذِينَ ءَامَنُوٓا۟ إِذَا نَـٰجَيْتُمُ ٱلرَّسُولَ فَقَدِّمُوا۟ بَيْنَ يَدَىْ نَجْوَىٰكُمْ
صَدَقَةً ۚ ذَٰلِكَ خَيْرٌ لَّكُمْ وَأَطْهَرُ ۚ فَإِن لَّمْ تَجِدُوا۟ فَإِنَّ ٱللَّهَ غَفُورٌ رَّحِيمٌ
﴿١٢﴾ ءَأَشْفَقْتُمْ أَن تُقَدِّمُوا۟ بَيْنَ يَدَىْ نَجْوَىٰكُمْ صَدَقَـٰتٍ ۚ فَإِذْ لَمْ تَفْعَلُوا۟
وَتَابَ ٱللَّهُ عَلَيْكُمْ فَأَقِيمُوا۟ ٱلصَّلَوٰةَ وَءَاتُوا۟ ٱلزَّكَوٰةَ وَأَطِيعُوا۟ ٱللَّهَ
وَرَسُولَهُۥ ۚ وَٱللَّهُ خَبِيرٌۢ بِمَا تَعْمَلُونَ ﴿١٣﴾ ۞ أَلَمْ تَرَ إِلَى ٱلَّذِينَ تَوَلَّوْا۟ قَوْمًا
غَضِبَ ٱللَّهُ عَلَيْهِم مَّا هُم مِّنكُمْ وَلَا مِنْهُمْ وَيَحْلِفُونَ عَلَى ٱلْكَذِبِ
وَهُمْ يَعْلَمُونَ ﴿١٤﴾ أَعَدَّ ٱللَّهُ لَهُمْ عَذَابًا شَدِيدًا ۖ إِنَّهُمْ سَآءَ مَا كَانُوا۟
يَعْمَلُونَ ﴿١٥﴾ ٱتَّخَذُوٓا۟ أَيْمَـٰنَهُمْ جُنَّةً فَصَدُّوا۟ عَن سَبِيلِ ٱللَّهِ فَلَهُمْ
عَذَابٌ مُّهِينٌ ﴿١٦﴾ لَّن تُغْنِىَ عَنْهُمْ أَمْوَٰلُهُمْ وَلَآ أَوْلَـٰدُهُم مِّنَ ٱللَّهِ
شَيْـًٔا ۚ أُو۟لَـٰٓئِكَ أَصْحَـٰبُ ٱلنَّارِ ۖ هُمْ فِيهَا خَـٰلِدُونَ ﴿١٧﴾ يَوْمَ يَبْعَثُهُمُ
ٱللَّهُ جَمِيعًا فَيَحْلِفُونَ لَهُۥ كَمَا يَحْلِفُونَ لَكُمْ ۖ وَيَحْسَبُونَ أَنَّهُمْ عَلَىٰ شَىْءٍ ۚ أَلَآ
إِنَّهُمْ هُمُ ٱلْكَـٰذِبُونَ ﴿١٨﴾ ٱسْتَحْوَذَ عَلَيْهِمُ ٱلشَّيْطَـٰنُ فَأَنسَىٰهُمْ ذِكْرَ
ٱللَّهِ ۚ أُو۟لَـٰٓئِكَ حِزْبُ ٱلشَّيْطَـٰنِ ۚ أَلَآ إِنَّ حِزْبَ ٱلشَّيْطَـٰنِ هُمُ ٱلْخَـٰسِرُونَ
﴿١٩﴾ إِنَّ ٱلَّذِينَ يُحَآدُّونَ ٱللَّهَ وَرَسُولَهُۥٓ أُو۟لَـٰٓئِكَ فِى ٱلْأَذَلِّينَ ﴿٢٠﴾
كَتَبَ ٱللَّهُ لَأَغْلِبَنَّ أَنَا۠ وَرُسُلِىٓ ۚ إِنَّ ٱللَّهَ قَوِىٌّ عَزِيزٌ ﴿٢١﴾

(12) Gelî yên ku bawerî anîn! Gava we xwest ku hûn bi dizî bi Pêxember re bipeyivin, beriya wê axaftina xwe sedeqeyekê bidin (xizanan). Ev ji bo we çêtir û paktir e. Eger hûn tiştekî nebînin (ku bikin sedeqe) vêca bi rastî Xwedê gunehjêbir û dilovan e.

(13) Erê ma hûn ji feqîrbûnê tirsiyan ku we berî hûn bi peyxember re biaxivin we sedeqe bi cih neanî? Êdî ku we ew nekir Xwedê hûn efû kirin. Nexwe berdewamî nimêj bikin, zekata malê xwe bidin û guhdariya Xwedê û Pêxemberê wî bikin. Teqez Xwedê ji kirinên we agahdar e.

(14) Ma te ew nedîtin, ew ên ku bûne dost û arîkar ji bo wan ên ku Xwedê xezeb li wan kirî (ku cihû ne)? Ew (munaqif) ne ji we ne, ne jî ji wan (cihûyan) e. Digel ku (rastiyê) zanin jî bi derew sond dixwin.

(15) Ellah Teala, ji wan (munafiqan) re ezabekî dijwar amade kiriye. Bi rastî ya ku ew dikin, çiqas pîs e!

(16) Wan (munafiqan) sondên xwe ji xwe re kirine mertal (da xwe û malê xwe pê biparêzin) û wan rêka Xwedê li xelkê girt. Vêca ji wan re ezabekî riswaker û hetikber heye.

(17) Mal û zarokên wan li hemberî ezabê Xwedê dê tu feydeyekê nede wan. Ew xelkê dojehê ne. Ew dê her û her lê bimînin.

(18) Wê roja ku Xwedê wan tevan sax dike û ji bo hesabdîtinê li hev kom dike, vêca ka çawa li dinyayê ji bo we bi derew sond dixwin, wisa ji Xwedê re jî dê sond bixwin. Ji wan we ye ku ew li ser tiştekî ne? Agahdar bin! Bêgumen ew her derewkar bi xwe ne.

(19) Şeytan li ser wan bûye desthilat, zikrê Xwedê bi wan daye jibîrkirin. Ha ev benda şeytên in. Agahdar bin! Bi rastî jî benda şeytên her yên xesirî ne.

(20) Bêguman ew ên ku neyartiya Xwedê û Pêxemberê Wî dikin. Ha ew (di nav) kesên rezîltirîn û riswatirîn de ne.

(21) Xwedê biryar daye: Bi rastî ez û qasidên xwe her em ê bi ser bikevin. Bêguman Xwedê hêzdar û serdest e.

لَّا تَجِدُ قَوْمًا يُؤْمِنُونَ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ يُوَادُّونَ مَنْ
حَادَّ اللَّهَ وَرَسُولَهُ وَلَوْ كَانُوا آبَاءَهُمْ أَوْ أَبْنَاءَهُمْ
أَوْ إِخْوَانَهُمْ أَوْ عَشِيرَتَهُمْ ۚ أُولَٰئِكَ كَتَبَ فِي قُلُوبِهِمُ
الْإِيمَانَ وَأَيَّدَهُم بِرُوحٍ مِّنْهُ ۖ وَيُدْخِلُهُمْ جَنَّاتٍ تَجْرِي
مِن تَحْتِهَا الْأَنْهَارُ خَالِدِينَ فِيهَا ۚ رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُمْ وَرَضُوا
عَنْهُ ۚ أُولَٰئِكَ حِزْبُ اللَّهِ ۚ أَلَا إِنَّ حِزْبَ اللَّهِ هُمُ الْمُفْلِحُونَ ﴿٢٢﴾

ترتيبها ٥٩ — سُورَةُ الحَشْرِ — آياتها ٢٤

بِسْمِ اللَّهِ الرَّحْمَٰنِ الرَّحِيمِ

سَبَّحَ لِلَّهِ مَا فِي السَّمَاوَاتِ وَمَا فِي الْأَرْضِ ۖ وَهُوَ الْعَزِيزُ الْحَكِيمُ
﴿١﴾ هُوَ الَّذِي أَخْرَجَ الَّذِينَ كَفَرُوا مِنْ أَهْلِ الْكِتَابِ مِن دِيَارِهِمْ
لِأَوَّلِ الْحَشْرِ ۚ مَا ظَنَنتُمْ أَن يَخْرُجُوا ۖ وَظَنُّوا أَنَّهُم مَّانِعَتُهُمْ
حُصُونُهُم مِّنَ اللَّهِ فَأَتَاهُمُ اللَّهُ مِنْ حَيْثُ لَمْ يَحْتَسِبُوا ۖ وَقَذَفَ
فِي قُلُوبِهِمُ الرُّعْبَ ۚ يُخْرِبُونَ بُيُوتَهُم بِأَيْدِيهِمْ وَأَيْدِي الْمُؤْمِنِينَ
فَاعْتَبِرُوا يَا أُولِي الْأَبْصَارِ ﴿٢﴾ وَلَوْلَا أَن كَتَبَ اللَّهُ عَلَيْهِمُ
الْجَلَاءَ لَعَذَّبَهُمْ فِي الدُّنْيَا ۖ وَلَهُمْ فِي الْآخِرَةِ عَذَابُ النَّارِ ﴿٣﴾

(22) Tu dê civateke ku bawerî bi Xwedê û roja axiretê anîbe nebînî ku ew ji wan kesên ku neyartiya Xwedê û pêxemberê Wî dikin, hez bikin. Çendî ew bavên wan, kurên wan, birayên wan, an eşîra wan bin jî. Ha ew, Xwedê di dilên wan de îman nivîsiye û bi cih kiriye, bi arîkarî û piştgiriyeke ji cem xwe ew xurt kirine. Xwedê dê wan bixe bihiştên wisa ku di binê (dartewl û koşkên) wan de çem diherikin û ew dê her û her lê bimînin. Xwedê ji wan razî bûye, ew jî ji Xwedê razî bûne. Ha ev benda Xwedê ne. Agahdar bin! Bi rastî jî benda Xwedê her ew in yên serfiraz û rizgarbûyî.

# SÛREYÊ HEŞIR

Sûreyê Heşir 24 (bîst û çar) ayet e. Li Medînê daketiye û navê vî sureyî ji ayeta 2’em tê ku di wê de bêjeya Heşir bihuriye û bi mehneya koç e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

(1) Çiqas tiştên li erd û asîmanan hene Xwedê tesbîh dikin (dibêjin: Xwedê ji her kêmasiyê pak û bilind e). Her ew e yê ’Ezîz, yê Hekîm (ku di kar û barê xwe de desthilat û karbinecih e).

(2) Xwedê ye, ew ê ku ji xwedîkitêban ên bawerî neanî (ku cihûyên Benî Nedr in), cara yekem ew ji welatê wan derxistin. We zen nedikir ku ew ê bêne derêxistin. Ji wan jî we ye ku keleyên wan dê wan ji (hêza) Xwedê biparêzin. Lê belê Xwedê ji devereke ku wan bîra wê nedibir ve hate wan. Xwedê tirs avêt dilê wan, bi awayekî wilo ku hem bi destên xwe hem jî bi destên mumînan xaniyên xwe wêran kirin. Vêca hey gelî aqilmendan, ders û îbret bigirin.

(3) Eger Xwedê ji bo wan derketin (a bi vî şeklê bûyî) nenivîsanda, di dinyayê de bi awayekî din (bi kuştin û dîlkirin) teqez dê ew bidana ezabê. Ji bo wan li axiretê jî ezabê êgir heye.

ذَٰلِكَ بِأَنَّهُمْ شَآقُّوا۟ ٱللَّهَ وَرَسُولَهُۥ ۖ وَمَن يُشَآقِّ ٱللَّهَ فَإِنَّ ٱللَّهَ شَدِيدُ
ٱلْعِقَابِ ﴿٤﴾ مَا قَطَعْتُم مِّن لِّينَةٍ أَوْ تَرَكْتُمُوهَا قَآئِمَةً
عَلَىٰٓ أُصُولِهَا فَبِإِذْنِ ٱللَّهِ وَلِيُخْزِىَ ٱلْفَٰسِقِينَ ﴿٥﴾ وَمَآ أَفَآءَ ٱللَّهُ
عَلَىٰ رَسُولِهِۦ مِنْهُمْ فَمَآ أَوْجَفْتُمْ عَلَيْهِ مِنْ خَيْلٍ وَلَا رِكَابٍ
وَلَٰكِنَّ ٱللَّهَ يُسَلِّطُ رُسُلَهُۥ عَلَىٰ مَن يَشَآءُ ۚ وَٱللَّهُ عَلَىٰ كُلِّ شَىْءٍ
قَدِيرٌ ﴿٦﴾ مَّآ أَفَآءَ ٱللَّهُ عَلَىٰ رَسُولِهِۦ مِنْ أَهْلِ ٱلْقُرَىٰ فَلِلَّهِ وَلِلرَّسُولِ
وَلِذِى ٱلْقُرْبَىٰ وَٱلْيَتَٰمَىٰ وَٱلْمَسَٰكِينِ وَٱبْنِ ٱلسَّبِيلِ كَىْ لَا يَكُونَ
دُولَةًۢ بَيْنَ ٱلْأَغْنِيَآءِ مِنكُمْ ۚ وَمَآ ءَاتَىٰكُمُ ٱلرَّسُولُ فَخُذُوهُ وَمَا
نَهَىٰكُمْ عَنْهُ فَٱنتَهُوا۟ ۚ وَٱتَّقُوا۟ ٱللَّهَ ۖ إِنَّ ٱللَّهَ شَدِيدُ ٱلْعِقَابِ ﴿٧﴾
لِلْفُقَرَآءِ ٱلْمُهَٰجِرِينَ ٱلَّذِينَ أُخْرِجُوا۟ مِن دِيَٰرِهِمْ وَأَمْوَٰلِهِمْ
يَبْتَغُونَ فَضْلًا مِّنَ ٱللَّهِ وَرِضْوَٰنًا وَيَنصُرُونَ ٱللَّهَ وَرَسُولَهُۥٓ ۚ أُو۟لَٰٓئِكَ
هُمُ ٱلصَّٰدِقُونَ ﴿٨﴾ وَٱلَّذِينَ تَبَوَّءُو ٱلدَّارَ وَٱلْإِيمَٰنَ مِن قَبْلِهِمْ
يُحِبُّونَ مَنْ هَاجَرَ إِلَيْهِمْ وَلَا يَجِدُونَ فِى صُدُورِهِمْ حَاجَةً
مِّمَّآ أُوتُوا۟ وَيُؤْثِرُونَ عَلَىٰٓ أَنفُسِهِمْ وَلَوْ كَانَ بِهِمْ خَصَاصَةٌ ۚ
وَمَن يُوقَ شُحَّ نَفْسِهِۦ فَأُو۟لَٰٓئِكَ هُمُ ٱلْمُفْلِحُونَ ﴿٩﴾

(4) Ev (ezab), ji ber vê ye ku wan dijminatiya Xwedê û pêxemberê Wî dikir. Kî, dijminatî û bêemriya Xwedê bike, vêca bi rastî ezabê Xwedê pir dijwar e.

(5) Çi darxurmeyên (Benî Nedran) ku we birîbin, an jî we li ser koka wan hiştibin ew bi destûra Xwedê bûye. Ev destûr, ji bo vê ye ku jirêderketiyan (Benî Nedran) riswa û rezîl bike.

(6) Ya ku Xwedê ji ji malên wan (cihûyan) xenîmet daye pêxemberê xwe, vêca we ji bo wê (xenîmetê) tu hesp û deve nebezandine. Lê belê Xwedê, kê bivê dê li dijî wan Pêxemberê xwe serfiraz bike. Xwedê li ser her tiştî qadir e.

(7) Ew malê ku bêşer Xwedê kiriye destkeftî ji bo pêxemberê xwe, ew ê ku ji xelkê gundan hatiye standin, vêca ew ji bo Xwedê û pêxemberê wî, xizmên pêxember û sêwiyan, xizan û rêwiyan e. Da ew xenîmet, tim nemîne di destê dewlemendên we de. Pêxamber çi fermanê bide ber we, wê bikin û çi li we qedexe bike (nehya we jê bike) xwe jê vedin. Hay ji hukm û fermanên Xwedê hebin. Bi rastî jî Xwedê ezabdijwar e.

(8) (Ew malê xenîmetê) ji bo feqîr û jarên muhaciran e, ew ên ku ji mal û welatê xwe hatine deranîn, daxwaza kerem û razîbûna Xwedayê xwe dikin û arîkariya (dînê) Xwedê û pêxemberê Wî dikin. Ha ev in ên di baweriya xwe de rast û durist.

(9) Ew ên hê ji berê ve li Medînê bicihbûne û berî hicreta muhaciran bawerî anîne, ew ji wan ên ku bi bal wan ve hicret kirin hez dikin û ji bo malê ku ji wan (muhaciran) re hatiye dayîn di dilê xwe de çavnebariyekê jî nakin. Çendî ku pêdiviya wan bi xenîmetê hebe jî muhaciran di ser xwe re digirin (hewcehiya muhaciran li pêşiya hewcehiya xwe dibînin). Kî xwe ji bexîliyê nefsa xwe biparêze, vêca bi rastî ew in yên rizgarbûyî û yên serfiraz.

وَالَّذِينَ جَاءُو مِنْ بَعْدِهِمْ يَقُولُونَ رَبَّنَا اغْفِرْ لَنَا
وَلِإِخْوَانِنَا الَّذِينَ سَبَقُونَا بِالْإِيمَانِ وَلَا تَجْعَلْ فِي قُلُوبِنَا
غِلًّا لِلَّذِينَ آمَنُوا رَبَّنَا إِنَّكَ رَءُوفٌ رَحِيمٌ ١٠ ۞ أَلَمْ تَرَ إِلَى
الَّذِينَ نَافَقُوا يَقُولُونَ لِإِخْوَانِهِمُ الَّذِينَ كَفَرُوا مِنْ أَهْلِ
الْكِتَابِ لَئِنْ أُخْرِجْتُمْ لَنَخْرُجَنَّ مَعَكُمْ وَلَا نُطِيعُ فِيكُمْ
أَحَدًا أَبَدًا وَإِنْ قُوتِلْتُمْ لَنَنْصُرَنَّكُمْ وَاللَّهُ يَشْهَدُ إِنَّهُمْ لَكَاذِبُونَ
١١ لَئِنْ أُخْرِجُوا لَا يَخْرُجُونَ مَعَهُمْ وَلَئِنْ قُوتِلُوا لَا يَنْصُرُونَهُمْ
وَلَئِنْ نَصَرُوهُمْ لَيُوَلُّنَّ الْأَدْبَارَ ثُمَّ لَا يُنْصَرُونَ ١٢
لَأَنْتُمْ أَشَدُّ رَهْبَةً فِي صُدُورِهِمْ مِنَ اللَّهِ ذَلِكَ بِأَنَّهُمْ قَوْمٌ
لَا يَفْقَهُونَ ١٣ لَا يُقَاتِلُونَكُمْ جَمِيعًا إِلَّا فِي قُرًى
مُحَصَّنَةٍ أَوْ مِنْ وَرَاءِ جُدُرٍ بَأْسُهُمْ بَيْنَهُمْ شَدِيدٌ تَحْسَبُهُمْ
جَمِيعًا وَقُلُوبُهُمْ شَتَّى ذَلِكَ بِأَنَّهُمْ قَوْمٌ لَا يَعْقِلُونَ ١٤
كَمَثَلِ الَّذِينَ مِنْ قَبْلِهِمْ قَرِيبًا ذَاقُوا وَبَالَ أَمْرِهِمْ وَلَهُمْ عَذَابٌ
أَلِيمٌ ١٥ كَمَثَلِ الشَّيْطَانِ إِذْ قَالَ لِلْإِنْسَانِ اكْفُرْ فَلَمَّا كَفَرَ
قَالَ إِنِّي بَرِيءٌ مِنْكَ إِنِّي أَخَافُ اللَّهَ رَبَّ الْعَالَمِينَ ١٦

(10) Ew ên di piştî wan (muhacir û ensariyan) de hatin, dibêjin: Xwedayê me! Li gunehên me û gunehên birayên me bibore, ew ên ku beriya me bawerî anîn, kîn û rika wan nexe dilê me! Xwedayê me, birastî tu Reuf î, Rehîm î (li ser bendeyê xwe zêde bi şewat î, dilovîn î)!

(11) Ma te ew ên munafiq nedîtin ku ji birayên xwe yên xwedankitêb ew ên ku kafir bûne re dibêjin: Eger hûn ji cih û warên xwe bêne deranîn, teqez em ê jî ligel we derkevin; li dijî we em ê hîç bi gotina tu kesî nekin. Eger şerê we bê kirin, muheqeq em ê arîkariya we bikin? Ellah Teala, şadehiyê dide ku munafiq bi rastî derewîn in.

(12) Sond be, eger ew bêne deranîn, munafiq ligel wan dernakevin, heke şerê wan bê kirin ew dê arîkariya wan nekin, heke (ferza- muhal) arî wan bikin jî dê bi şûn xwe ve vegerin û birevin, piştre arîkariya wan (cihûyan) jî dê neyê kirin.

(13) Tirsa we di dilê munafiqan de ji tirsa Xwedê bêhtir e. Lewra ew, civateke tênegihîştî ne.

(14) Cihû, ku di warekî asê de yan jî di pişt dîwaran de nebin, pêkve şerê we nakin. Kîna wan bi hev re pir dijwar e. Ji te we ye ku ew bi hev re hevkar in, hal ev e ku dilê wan belawela (û ji hev cuda) ne. Ev rewşa wan ji ber ku ew civateke kêmaqil û tênegihayî ne.

(15) Rewşa wan cihûyan mîna rewşa wan (muşrik)ên ku di beriya wan de, ji nêzîk ve (li dinyayê) cezayê kar û kiryarên xwe çêjandine û ji bo wan (li axiretê) ezabekî dijwar heye.

(16) Rewşa munafiqan eynî wekî rewşa şeytên e, gava ji însên re dibêje: Kafir bibe. Çi gava ku însan kafir dibe, jê re dibêje: Bi rastî ez ji te dûr im. Bêguman ez ji perwerdegarê alemê Ellah Teala ditirsim.

17 Paşê encama her duyan (cihû û munafiqan) jî dê bibe agir, ew ê ku dê her û her tê de bimînin. Ha ev e cezayê zaliman.

18 Gelî yên ku bawerî anîn! Bi kirina ewamiran û nekirina menahiyan ji ezabê Xwedê xwe biparêzin û bila her kes binêre ka ji bo sibehê (roja qiyametê) çi amade kiriye (û li pêşiya xwe çi hinartiye). Hay ji fermanên Xwedê hebin, bi rastî Xwedê ji kirinên we agahdar e.

19 Hûn wekî wan ên ku wan Xwedê ji bîr kir nebin, vêca Xwedê wisa li wan kir ku ew xwe ji bîr bikin (ango berjewendiyên wan bi wan da jibîrkirin). Ha ew in, yên jirêderketî.

20 Cehenemî û cenetî wekhev nabin. Cenetî, ew bi xwe yên rizgarbûyî ne.

21 Eger me ev Quran li ser çiyayekî bihinarta, bi rastî te dê ew bidîta ku wa ye ji tirsa Xwedê tirsgirtî, berdestbûyî û parçeparçe bûye. Em van nimûneyan ji mirovan re aşkera dikin da ku bifikirin.

22 Ew Ellah e, ew ê ku ji Wî pê ve tu xweda nîn in. Ew tevekê xeyb û darîçavê dizane. Her ew e, yê Rehman, yê Rehîm.

23 Ew Xweda ye, yê ku ji Wî pê ve tu îlah tun in. Ew xwediyê her tiştî ye, ji her kêmasiyê pak û paqij e, serkaniya rihetî û selametiyê ye, pêbawer e, li ser her tiştî zêrevan e, di karê xwe de serkeftî ye, ji mexlûqê xwe re serdest e, xwemezindêr e (mezin e û kubar e), Xwedê pak û bêrî ye ji ya ku (ew) jê re dikin hevpar.

فَكَانَ عَٰقِبَتَهُمَآ أَنَّهُمَا فِى ٱلنَّارِ خَٰلِدَيْنِ فِيهَا ۚ وَذَٰلِكَ جَزَٰٓؤُا۟
ٱلظَّٰلِمِينَ ﴿١٧﴾ يَٰٓأَيُّهَا ٱلَّذِينَ ءَامَنُوا۟ ٱتَّقُوا۟ ٱللَّهَ وَلْتَنظُرْ
نَفْسٌ مَّا قَدَّمَتْ لِغَدٍ ۖ وَٱتَّقُوا۟ ٱللَّهَ ۚ إِنَّ ٱللَّهَ خَبِيرٌۢ بِمَا تَعْمَلُونَ
﴿١٨﴾ وَلَا تَكُونُوا۟ كَٱلَّذِينَ نَسُوا۟ ٱللَّهَ فَأَنسَىٰهُمْ أَنفُسَهُمْ ۚ أُو۟لَٰٓئِكَ
هُمُ ٱلْفَٰسِقُونَ ﴿١٩﴾ لَا يَسْتَوِىٓ أَصْحَٰبُ ٱلنَّارِ وَأَصْحَٰبُ
ٱلْجَنَّةِ ۚ أَصْحَٰبُ ٱلْجَنَّةِ هُمُ ٱلْفَآئِزُونَ ﴿٢٠﴾ لَوْ أَنزَلْنَا هَٰذَا
ٱلْقُرْءَانَ عَلَىٰ جَبَلٍ لَّرَأَيْتَهُۥ خَٰشِعًا مُّتَصَدِّعًا مِّنْ خَشْيَةِ
ٱللَّهِ ۚ وَتِلْكَ ٱلْأَمْثَٰلُ نَضْرِبُهَا لِلنَّاسِ لَعَلَّهُمْ يَتَفَكَّرُونَ
﴿٢١﴾ هُوَ ٱللَّهُ ٱلَّذِى لَآ إِلَٰهَ إِلَّا هُوَ ۖ عَٰلِمُ ٱلْغَيْبِ وَٱلشَّهَٰدَةِ ۖ
هُوَ ٱلرَّحْمَٰنُ ٱلرَّحِيمُ ﴿٢٢﴾ هُوَ ٱللَّهُ ٱلَّذِى لَآ إِلَٰهَ إِلَّا هُوَ
ٱلْمَلِكُ ٱلْقُدُّوسُ ٱلسَّلَٰمُ ٱلْمُؤْمِنُ ٱلْمُهَيْمِنُ ٱلْعَزِيزُ
ٱلْجَبَّارُ ٱلْمُتَكَبِّرُ ۚ سُبْحَٰنَ ٱللَّهِ عَمَّا يُشْرِكُونَ
﴿٢٣﴾ هُوَ ٱللَّهُ ٱلْخَٰلِقُ ٱلْبَارِئُ ٱلْمُصَوِّرُ ۖ لَهُ ٱلْأَسْمَآءُ ٱلْحُسْنَىٰ ۚ
يُسَبِّحُ لَهُۥ مَا فِى ٱلسَّمَٰوَٰتِ وَٱلْأَرْضِ ۖ وَهُوَ ٱلْعَزِيزُ ٱلْحَكِيمُ ﴿٢٤﴾

ترتيبها ٦٠ — سُورَةُ ٱلْمُمْتَحَنَةِ — آياتها ١٣

24 Ew Xweda ye, yê ku afirîner e, ji tunehiyê avasazê avasazan e, ji mexlûqan re dirûvdêr e, navên herî xweşik her jê re ne, yên li asîman û erdê Wî pak didêrin û Ew e yê her ’Ezîz, yê her Hekîm (ewê ku di kar û barê xwe de serdest û karbinecih).

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ
يَٰٓأَيُّهَا ٱلَّذِينَ ءَامَنُواْ لَا تَتَّخِذُواْ عَدُوِّي وَعَدُوَّكُمۡ أَوۡلِيَآءَ تُلۡقُونَ
إِلَيۡهِم بِٱلۡمَوَدَّةِ وَقَدۡ كَفَرُواْ بِمَا جَآءَكُم مِّنَ ٱلۡحَقِّ يُخۡرِجُونَ ٱلرَّسُولَ
وَإِيَّاكُمۡ أَن تُؤۡمِنُواْ بِٱللَّهِ رَبِّكُمۡ إِن كُنتُمۡ خَرَجۡتُمۡ جِهَٰدٗا فِي سَبِيلِي
وَٱبۡتِغَآءَ مَرۡضَاتِيۚ تُسِرُّونَ إِلَيۡهِم بِٱلۡمَوَدَّةِ وَأَنَا۠ أَعۡلَمُ بِمَآ أَخۡفَيۡتُمۡ
وَمَآ أَعۡلَنتُمۡۚ وَمَن يَفۡعَلۡهُ مِنكُمۡ فَقَدۡ ضَلَّ سَوَآءَ ٱلسَّبِيلِ ١ إِن
يَثۡقَفُوكُمۡ يَكُونُواْ لَكُمۡ أَعۡدَآءٗ وَيَبۡسُطُوٓاْ إِلَيۡكُمۡ أَيۡدِيَهُمۡ وَأَلۡسِنَتَهُم
بِٱلسُّوٓءِ وَوَدُّواْ لَوۡ تَكۡفُرُونَ ٢ لَن تَنفَعَكُمۡ أَرۡحَامُكُمۡ وَلَآ أَوۡلَٰدُكُمۡۚ
يَوۡمَ ٱلۡقِيَٰمَةِ يَفۡصِلُ بَيۡنَكُمۡۚ وَٱللَّهُ بِمَا تَعۡمَلُونَ بَصِيرٞ ٣ قَدۡ
كَانَتۡ لَكُمۡ أُسۡوَةٌ حَسَنَةٞ فِيٓ إِبۡرَٰهِيمَ وَٱلَّذِينَ مَعَهُۥٓ إِذۡ قَالُواْ لِقَوۡمِهِمۡ
إِنَّا بُرَءَٰٓؤُاْ مِنكُمۡ وَمِمَّا تَعۡبُدُونَ مِن دُونِ ٱللَّهِ كَفَرۡنَا بِكُمۡ وَبَدَا بَيۡنَنَا
وَبَيۡنَكُمُ ٱلۡعَدَٰوَةُ وَٱلۡبَغۡضَآءُ أَبَدًا حَتَّىٰ تُؤۡمِنُواْ بِٱللَّهِ وَحۡدَهُۥٓ إِلَّا
قَوۡلَ إِبۡرَٰهِيمَ لِأَبِيهِ لَأَسۡتَغۡفِرَنَّ لَكَ وَمَآ أَمۡلِكُ لَكَ مِنَ ٱللَّهِ مِن شَيۡءٖۖ
رَّبَّنَا عَلَيۡكَ تَوَكَّلۡنَا وَإِلَيۡكَ أَنَبۡنَا وَإِلَيۡكَ ٱلۡمَصِيرُ ٤ رَبَّنَا لَا تَجۡعَلۡنَا
فِتۡنَةٗ لِّلَّذِينَ كَفَرُواْ وَٱغۡفِرۡ لَنَا رَبَّنَآۖ إِنَّكَ أَنتَ ٱلۡعَزِيزُ ٱلۡحَكِيمُ ٥

## SÛREYÊ MUMTEHÎNE

Sûreyê Mumtehîne sêzdeh (13) ayet e. Li Medînê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta 10'em girtiye ku tê de bêjeya Îmtîhan derbas bûye û bi mehneya ezmûn e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

1 Gelî yên ku bawerî anîn! Dijminê min û dijminê xwe ji xwe re nekin dost û arîkar, bi hezkirineke ku hûn (sirrê Pêxember) digihînin wan. Bi rastî ew bi dîn û Qurana ku ji we re hatine şandin baweriyê nayînin. Ji ber ku we bi Xwedayê xwe Ellah Teala bawerî anîbû, hûn û pêxember ji cih û warê we (Mekkê) derxistn. Eger hûn ji bo cîhadê û razîbûna min (ji warê xwe) derketibin, hûn wan ji xwe re nekin dost û arîkar ku bi dizî hûn sirrê Pêxember digihînin wan, digel ku ez bi ya hûn vedişêrin û ya hûn aşkera dikin jî dizanim. Ji we kî hevaltiya wan bike (sirrê mislimanan ji wan re diyar bike) bi rastî wî riya rast winda kiriye.

2 Eger hûn bikevin destê wan (û ew zora we bibin), dê ji we re bibin dijmin û dê bi xerabiyê dest û zimanên xwe dirêjî we bikin. Jixwe ew ji dil û can dixwazin ku hûn jî (wekî wan) kafir bibin.

3 Roja qiyametê kes û zarokên we dê tu feydê nedin we. Xwedê , (roja qiyametê) dê we ji hev biqetîne. Xwedê bi ya hûn dikin bîner e.

4 Bi rastî di serpêhatiya Îbrahîm Pêxember de û bawermendên ligel wî ji bo we nimûneyeke spehî û baş hebû; wê dema wan ji gelê xwe re gotin: Em ji we û pûtên ku ji bilî Xwedê hûn wan dihebînin bêrî û dûr in, em (rêça) we nas nakin. Ev rik û neyartî her di navbera me û we de xuya ye û ranabe heta hûn bawerî bi Xwedê tenê neyînin. (Di her tiştî de Îbrahîm Pêxember ji bo we nimûne ye) ji bilî gotina Îbrahîm a ji bavê xwe re gotî, “Sond be, ez ê lêborîna te bixwazim, lê belê ez nikarim tu ezabê Xwedê ji ser te bidim alî ” (ev ji bo we ne nimûne ye). Xwedayê me! Me xwe her spartiye te û em li te vegeriyane û veger bes bi bal te ve ye.

5 Xwedayê me! Me bi ezabdayîna yên kafir neceribîne, bi îzayeke ji taqeta me zêde me îmtîhan neke. Xwedayê me, li me bibore! Bi rastî her tu yî yê serdest, yê karbinecih.

لَقَدْ كَانَ لَكُمْ فِيهِمْ أُسْوَةٌ حَسَنَةٌ لِمَنْ كَانَ يَرْجُوا اللَّهَ وَالْيَوْمَ الْآخِرَ
وَمَنْ يَتَوَلَّ فَإِنَّ اللَّهَ هُوَ الْغَنِيُّ الْحَمِيدُ ٦ ۞ عَسَى اللَّهُ أَنْ يَجْعَلَ
بَيْنَكُمْ وَبَيْنَ الَّذِينَ عَادَيْتُمْ مِنْهُمْ مَوَدَّةً وَاللَّهُ قَدِيرٌ وَاللَّهُ غَفُورٌ رَحِيمٌ
٧ لَا يَنْهَاكُمُ اللَّهُ عَنِ الَّذِينَ لَمْ يُقَاتِلُوكُمْ فِي الدِّينِ وَلَمْ يُخْرِجُوكُمْ
مِنْ دِيَارِكُمْ أَنْ تَبَرُّوهُمْ وَتُقْسِطُوا إِلَيْهِمْ إِنَّ اللَّهَ يُحِبُّ الْمُقْسِطِينَ
٨ إِنَّمَا يَنْهَاكُمُ اللَّهُ عَنِ الَّذِينَ قَاتَلُوكُمْ فِي الدِّينِ وَأَخْرَجُوكُمْ
مِنْ دِيَارِكُمْ وَظَاهَرُوا عَلَى إِخْرَاجِكُمْ أَنْ تَوَلَّوْهُمْ وَمَنْ يَتَوَلَّهُمْ فَأُولَئِكَ
هُمُ الظَّالِمُونَ ٩ يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا إِذَا جَاءَكُمُ الْمُؤْمِنَاتُ
مُهَاجِرَاتٍ فَامْتَحِنُوهُنَّ اللَّهُ أَعْلَمُ بِإِيمَانِهِنَّ فَإِنْ عَلِمْتُمُوهُنَّ مُؤْمِنَاتٍ
فَلَا تَرْجِعُوهُنَّ إِلَى الْكُفَّارِ لَا هُنَّ حِلٌّ لَهُمْ وَلَا هُمْ يَحِلُّونَ لَهُنَّ وَآتُوهُمْ
مَا أَنْفَقُوا وَلَا جُنَاحَ عَلَيْكُمْ أَنْ تَنْكِحُوهُنَّ إِذَا آتَيْتُمُوهُنَّ أُجُورَهُنَّ
وَلَا تُمْسِكُوا بِعِصَمِ الْكَوَافِرِ وَاسْأَلُوا مَا أَنْفَقْتُمْ وَلْيَسْأَلُوا مَا أَنْفَقُوا
ذَلِكُمْ حُكْمُ اللَّهِ يَحْكُمُ بَيْنَكُمْ وَاللَّهُ عَلِيمٌ حَكِيمٌ ١٠ وَإِنْ فَاتَكُمْ
شَيْءٌ مِنْ أَزْوَاجِكُمْ إِلَى الْكُفَّارِ فَعَاقَبْتُمْ فَآتُوا الَّذِينَ ذَهَبَتْ
أَزْوَاجُهُمْ مِثْلَ مَا أَنْفَقُوا وَاتَّقُوا اللَّهَ الَّذِي أَنْتُمْ بِهِ مُؤْمِنُونَ ١١

(6) Sond be, ew (Îbrahîm û yên digel wî) ji bo we nimûneyên herî baş in, ji bo yên ku xelata Xwedê hêvî bike û ji roja qiyametê bitirse. Kî ku berê xwe (ji îmanê) vegerîne vêca bi rastî her Xwedê ye yê dewlemend, yê layîqê hemd û senayê.

(7) Dibe ku Xwedê (bi hîdayetkirina wan) hezkirinekê bixe navbera we û wan ên ku we dijminiya wan dikir. Xwedê, xwedanhêz û şiyan e. Xwedê gunehjêbir û dilovîn e.

(8) Ellah Teala li we qedexe (nehye we) nake ku hûn qencî û edaletê digel wan bikin, ew ên ku ji bo dîn şerê we nekirin û hûn ji welatê we nexistin der. Bi rastî Xwedê ji edaletkeran hez dike.

(9) Bes Xwedê li we qedexe (nehya we) dike ku hûn wan ên ku ji bo dîn şerê we kirin û hûn ji cih û warê we der xistin û ji bo deranîna we arîkarî kirin ku hûn ji xwe re bikin dost û arîkar. Kî wan ji xwe re bike dost û arîkar, vêca ha ew in ên sitemkar.

(10) Gelî yên ku bawerî anîne! Gava ku jinên bawermend hicret bikin û bên cem we, wan biceribînin (ka wan ji dil bawerî aniye yan na). Xwedê bêhtir agahdar e ji îmana wan. Eger we zanî ku ew jin ji dil bawermend in, wan li kafiran venegerînin. Ne ew jinên bawermend li kafiran helal in ne jî kafir li wan jinan helal in. Ew mehra ku mêrê wan jinan daye wan, li wan (mêrên kafir) vegerînin. Dema hûn mehra wan jinan bidin wan, tu guneh ji we re nîn e ku hûn bi wan re bizewicin. Jinên kafir di bin mehra xwe de negirin, ew mehra ku we daye wan (jinên ku gihîştine kafiran) ji wan bistînin. Bila ew (kafir) jî mehra ku dane jinên xwe (ew ên ku misliman bûne û hûn bi wan re zewicîn) ji we bixwazin. Ev hukmê Xwedê ye, Xwedê di navbera we de hukim dike. Xwedê zana û karbinecih e.

(11) Eger jinek ji jinên we bixerife û bigihîje kafiran, vêca we bi wan re şer kir û hûn bi ser ketin û we xenîmet bi dest xist, êdî ji xenîmetê bi qasî mehra ku dane, bidin wan mêrên ku jinên wan revîn û kafir bûne û hay ji hukmê Xwedê hebin, ew Xwedayê ku we bawerî pê aniye.

يَٰٓأَيُّهَا ٱلنَّبِيُّ إِذَا جَآءَكَ ٱلْمُؤْمِنَٰتُ يُبَايِعْنَكَ عَلَىٰٓ أَن لَّا يُشْرِكْنَ
بِٱللَّهِ شَيْـًٔا وَلَا يَسْرِقْنَ وَلَا يَزْنِينَ وَلَا يَقْتُلْنَ أَوْلَٰدَهُنَّ وَلَا يَأْتِينَ
بِبُهْتَٰنٍ يَفْتَرِينَهُۥ بَيْنَ أَيْدِيهِنَّ وَأَرْجُلِهِنَّ وَلَا يَعْصِينَكَ
فِى مَعْرُوفٍ فَبَايِعْهُنَّ وَٱسْتَغْفِرْ لَهُنَّ ٱللَّهَ إِنَّ ٱللَّهَ غَفُورٌ رَّحِيمٌ
﴿١٢﴾ يَٰٓأَيُّهَا ٱلَّذِينَ ءَامَنُوا۟ لَا تَتَوَلَّوْا۟ قَوْمًا غَضِبَ ٱللَّهُ عَلَيْهِمْ
قَدْ يَئِسُوا۟ مِنَ ٱلْءَاخِرَةِ كَمَا يَئِسَ ٱلْكُفَّارُ مِنْ أَصْحَٰبِ ٱلْقُبُورِ ﴿١٣﴾

ترتيبها ٦١ — سُورَةُ الصَّفِّ — آياتها ١٤

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

سَبَّحَ لِلَّهِ مَا فِى ٱلسَّمَٰوَٰتِ وَمَا فِى ٱلْأَرْضِ وَهُوَ ٱلْعَزِيزُ ٱلْحَكِيمُ
﴿١﴾ يَٰٓأَيُّهَا ٱلَّذِينَ ءَامَنُوا۟ لِمَ تَقُولُونَ مَا لَا تَفْعَلُونَ ﴿٢﴾
كَبُرَ مَقْتًا عِندَ ٱللَّهِ أَن تَقُولُوا۟ مَا لَا تَفْعَلُونَ ﴿٣﴾ إِنَّ
ٱللَّهَ يُحِبُّ ٱلَّذِينَ يُقَٰتِلُونَ فِى سَبِيلِهِۦ صَفًّا كَأَنَّهُم
بُنْيَٰنٌ مَّرْصُوصٌ ﴿٤﴾ وَإِذْ قَالَ مُوسَىٰ لِقَوْمِهِۦ يَٰقَوْمِ لِمَ
تُؤْذُونَنِى وَقَد تَّعْلَمُونَ أَنِّى رَسُولُ ٱللَّهِ إِلَيْكُمْ فَلَمَّا
زَاغُوٓا۟ أَزَاغَ ٱللَّهُ قُلُوبَهُمْ وَٱللَّهُ لَا يَهْدِى ٱلْقَوْمَ ٱلْفَٰسِقِينَ ﴿٥﴾

(12) Hey Pêxember! Gava ku jinên bawermend bên cem te, da peymanê bidin te ku ew hevpişkan ji Xwedê re çênekin, diziyê nekin, zinayê nekin, zarokên xwe nekujin, tu zarokan bi bêbextî dûv zilamê xwe nexin û di qenciyê de ji fermana te dernekevin, vêca tu jî peymanê ji wan wergire, ji Xwedê ji bo wan lêborînê bixwaze, bi rastî Xwedê gunehveşêr û dilovîn e.

(13) Gelî yên ku bawerî anîne! Dostanî û arîkariya qewmekî nekin ku Xwedê ezab li wan kiriye (mexsed pê kafir in). Ew ji xelata axiretê bêhêvî ne, ka çawa yê kafir ji miriyan bêhêvî ne (ku ew nikarin arikariya wan bikin).

# SÛREYÊ SEFF

Sûreyê Seff, çardeh (14) ayet e. Li Medînê daketiye û sûre navê xwe ji ayeta 4'em girtiye ku tê de bêjeya Sef derbas bûye û bi mehneya rêz e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

(1) Çiqas tiştên li erd û asîmanan hene Xwedê tesbîh dikin (ji her kêmasiyê pak didêrin) û her ew e yê 'Ezîz yê Hekîm.

(2) Gelî yên ku bawerî anîne! Ya ku hûn nakin ma çima hûn dibêjin?

(3) Gotina ku hûn dibêjin û nakin li cem Xwedê dibê sebebê hişm û hêrsê.

(4) Bi rastî Xwedê hez ji wan ên ku di rêka Xwedê de yekrêz şer dikin, dike; her wekî ew avahiyeke saxlam û bi hev ve girêdayî ne.

(5) Bêne bîra xwe; wê dema Mûsa ji gelê xwe re got: Gelî miletê min! Hûn çima min rencîde dikin û min diêşênin. Bi rastî jî hûn dizanin ez qasidê Xwedê me ku ji bo we hatime hinartin? Vêca çi gava ew ji rê derketin, Xwedê jî dilên wan ji riya rast derxist. Xwedê civata jirêderketî nayîne ser riya rast.

وَإِذْ قَالَ عِيسَى ابْنُ مَرْيَمَ يَا بَنِي إِسْرَائِيلَ إِنِّي رَسُولُ اللَّهِ إِلَيْكُم مُّصَدِّقًا
لِّمَا بَيْنَ يَدَيَّ مِنَ التَّوْرَاةِ وَمُبَشِّرًا بِرَسُولٍ يَأْتِي مِن بَعْدِي اسْمُهُ أَحْمَدُ فَلَمَّا
جَاءَهُم بِالْبَيِّنَاتِ قَالُوا هَٰذَا سِحْرٌ مُّبِينٌ ﴿٦﴾ وَمَنْ أَظْلَمُ مِمَّنِ افْتَرَىٰ
عَلَى اللَّهِ الْكَذِبَ وَهُوَ يُدْعَىٰ إِلَى الْإِسْلَامِ وَاللَّهُ لَا يَهْدِي الْقَوْمَ الظَّالِمِينَ
﴿٧﴾ يُرِيدُونَ لِيُطْفِئُوا نُورَ اللَّهِ بِأَفْوَاهِهِمْ وَاللَّهُ مُتِمُّ نُورِهِ وَلَوْ كَرِهَ
الْكَافِرُونَ ﴿٨﴾ هُوَ الَّذِي أَرْسَلَ رَسُولَهُ بِالْهُدَىٰ وَدِينِ الْحَقِّ لِيُظْهِرَهُ
عَلَى الدِّينِ كُلِّهِ وَلَوْ كَرِهَ الْمُشْرِكُونَ ﴿٩﴾ يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا هَلْ أَدُلُّكُمْ
عَلَىٰ تِجَارَةٍ تُنجِيكُم مِّنْ عَذَابٍ أَلِيمٍ ﴿١٠﴾ تُؤْمِنُونَ بِاللَّهِ وَرَسُولِهِ وَتُجَاهِدُونَ
فِي سَبِيلِ اللَّهِ بِأَمْوَالِكُمْ وَأَنفُسِكُمْ ذَٰلِكُمْ خَيْرٌ لَّكُمْ إِن كُنتُمْ تَعْلَمُونَ ﴿١١﴾
يَغْفِرْ لَكُمْ ذُنُوبَكُمْ وَيُدْخِلْكُمْ جَنَّاتٍ تَجْرِي مِن تَحْتِهَا الْأَنْهَارُ وَمَسَاكِنَ
طَيِّبَةً فِي جَنَّاتِ عَدْنٍ ذَٰلِكَ الْفَوْزُ الْعَظِيمُ ﴿١٢﴾ وَأُخْرَىٰ تُحِبُّونَهَا نَصْرٌ
مِّنَ اللَّهِ وَفَتْحٌ قَرِيبٌ وَبَشِّرِ الْمُؤْمِنِينَ ﴿١٣﴾ يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا كُونُوا
أَنصَارَ اللَّهِ كَمَا قَالَ عِيسَى ابْنُ مَرْيَمَ لِلْحَوَارِيِّينَ مَنْ أَنصَارِي إِلَى اللَّهِ
قَالَ الْحَوَارِيُّونَ نَحْنُ أَنصَارُ اللَّهِ فَآمَنَت طَّائِفَةٌ مِّن بَنِي إِسْرَائِيلَ
وَكَفَرَت طَّائِفَةٌ فَأَيَّدْنَا الَّذِينَ آمَنُوا عَلَىٰ عَدُوِّهِمْ فَأَصْبَحُوا ظَاهِرِينَ ﴿١٤﴾

(6) Di bîr bîne, wê dema Îsayê kurê Meryemê got: Gelî zarokên Îsraîl! Ez qasidê Xwedê me ji bo we hatime şandin, ez rastderêxê kitêba berî xwe me ku Tewrat e û mizgîna pêxemberekî didim we ku dê piştî min were, navê wî Ehmed e. Lê belê çi gava ku wî delîlên aşkera ji wan re anîn, gotin: Ev, sêrbaziyeke aşkera ye.

(7) Ma ji wî kesê ku bi derew li ser navê Xwedê lêbîne, kî zalimtir e? Hal ev e ku ew bi bal îslamê ve tê vexwendin. Xwedê civata sitemkaran nayîne ser riya rast.

(8) Ew (sitemkar û kafir) dixwazin ku ronahiya Xwedê (ku Quran e) bi devên/gotinên xwe vetemirînin. Hal ev e ku Xwedê yê ronahiya xwe temam bike (û bike desthilat) çendî bi kafiran ne xweş be jî.

(9) Xwedê ye yê ku qasidê xwe (Muhemmed) bi hîdayet û heqiyê şandiye da ku dînê xwe bixe serpişka hemû dînan, çendî ev bi muşrikan ne xweş be jî.

(10) Gelî yên bawerî anîne! Ma ez bazirganiyekê nîşanî we bidim ku we ji ezabekî dijwar xelas bike?

(11) (Ew bazirganî ev e:) Bawerî bi Xwedê û pêxemberê Wî bînin, di riya Xwedê de bi mal û canê xwe cîhadê bikin. Ha ev (bawerîanîn û cîhad) eger hûn bizanin ji bo we çêtir e.

(12) (Eger hûn vê bikin) Xwedê dê li gunehên we bibore û we bixe bihiştên ku di binê (qesr û mêwedarên) wan de çem diherikin û di cenetên Ednê de (dê we bixe) xaniyên pak û rind. Ha ev, serfiraziya mezin e.

(13) Tiştekî din jî heye ku hûn dê jê hez bikin, arîkariyek û fetheke nêzîk e ji cem Xwedê (ku fetha Mekkê ye). (Ya Muhemmed) Mizgînê bide bawermendan.

(14) Gelî yên bawerî anîne! Bibin arîkarên (dînê) Xwedê (yanî dînê Xwedê bi ser bixin û bilind bikin); her wekî ku Îsayê kurê Meryemê, ji hewariyan (hevalên xwe yên bijare) re gotiye: Ji bo ragihandina dînê Xwedê kî dê bibe arîkarê min? Hawariyan got: Em in, arîkarên dînê Xwedê. Ji zarokên Îsraîl komekê (ku hawarî ne) bawerî anî û komek jî kafir bûn. Vêca me piştgiriya wan ên ku bawerî anîbûn kir, êdî ew (li hemberî yên kafir) bi ser ketin.

آياتها ١١ — سُورَةُ الجُمُعَةِ — ترتيبها ٦٢

بِسۡمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحۡمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ
يُسَبِّحُ لِلَّهِ مَا فِي ٱلسَّمَٰوَٰتِ وَمَا فِي ٱلۡأَرۡضِ ٱلۡمَلِكِ ٱلۡقُدُّوسِ ٱلۡعَزِيزِ
ٱلۡحَكِيمِ ١ هُوَ ٱلَّذِي بَعَثَ فِي ٱلۡأُمِّيِّـۧنَ رَسُولٗا مِّنۡهُمۡ يَتۡلُواْ
عَلَيۡهِمۡ ءَايَٰتِهِۦ وَيُزَكِّيهِمۡ وَيُعَلِّمُهُمُ ٱلۡكِتَٰبَ وَٱلۡحِكۡمَةَ وَإِن كَانُواْ
مِن قَبۡلُ لَفِي ضَلَٰلٖ مُّبِينٖ ٢ وَءَاخَرِينَ مِنۡهُمۡ لَمَّا يَلۡحَقُواْ بِهِمۡۚ
وَهُوَ ٱلۡعَزِيزُ ٱلۡحَكِيمُ ٣ ذَٰلِكَ فَضۡلُ ٱللَّهِ يُؤۡتِيهِ مَن يَشَآءُۚ وَٱللَّهُ
ذُو ٱلۡفَضۡلِ ٱلۡعَظِيمِ ٤ مَثَلُ ٱلَّذِينَ حُمِّلُواْ ٱلتَّوۡرَىٰةَ ثُمَّ لَمۡ
يَحۡمِلُوهَا كَمَثَلِ ٱلۡحِمَارِ يَحۡمِلُ أَسۡفَارَۢاۚ بِئۡسَ مَثَلُ ٱلۡقَوۡمِ
ٱلَّذِينَ كَذَّبُواْ بِـَٔايَٰتِ ٱللَّهِۚ وَٱللَّهُ لَا يَهۡدِي ٱلۡقَوۡمَ ٱلظَّٰلِمِينَ ٥
قُلۡ يَٰٓأَيُّهَا ٱلَّذِينَ هَادُوٓاْ إِن زَعَمۡتُمۡ أَنَّكُمۡ أَوۡلِيَآءُ لِلَّهِ مِن
دُونِ ٱلنَّاسِ فَتَمَنَّوُاْ ٱلۡمَوۡتَ إِن كُنتُمۡ صَٰدِقِينَ ٦ وَلَا يَتَمَنَّوۡنَهُۥٓ
أَبَدَۢا بِمَا قَدَّمَتۡ أَيۡدِيهِمۡۚ وَٱللَّهُ عَلِيمُۢ بِٱلظَّٰلِمِينَ ٧ قُلۡ إِنَّ
ٱلۡمَوۡتَ ٱلَّذِي تَفِرُّونَ مِنۡهُ فَإِنَّهُۥ مُلَٰقِيكُمۡۖ ثُمَّ تُرَدُّونَ
إِلَىٰ عَٰلِمِ ٱلۡغَيۡبِ وَٱلشَّهَٰدَةِ فَيُنَبِّئُكُم بِمَا كُنتُمۡ تَعۡمَلُونَ ٨

# SÛREYÊ CUMU'E

Sûreyê Cumu'e yazdeh (11) ayet e. Li Medînê daketiye û navê sûre ji ayeta 9’em tê ku di wê de bêjeya El-Cumu'e derbas bûye û bi mehneya roja înê ye.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

(1) Çiqas tiştên ku li erd û asîmanan hene ji Xwedê re tesbîh dikin, ew Xwedayê ku xwedîyê her tiştî ye, ew ê ku ji her kêmasiyê pak e û pîroz e, ewê li ser mexlûqê xwe serdest e û têk naçe û ewê ku di kar û barê xwe de karbinecih e.

(2) Ew Xwedayê ku ji nexwendayan pêxemberek ji nav wan şand da ku ji wan re ayetên Xwedê bixwîne, wan (ji qirêja şirk û exlaqên riswayî) paqij bike û wan fêrî Quran û hîkmetê bike. Digel ku ew berî (ku pêxember ji wan re bê şandin) di nav rêşaşiyeke aşkera de bûn.

(3) (Xwedê, Muhemmed ji) hin kesên din re jî (şandiye ku) hê jî beşdarî nav wan nebûne. Her ew e yê ’Ezîz yê Hekîm.

(4) Ev (salixê baş) qencî û kerema Xwedê ye. (Ew) kê bivê dide wî. Xwedê xwediyê kerema mezin e.

(5) Rewşa wan cihûyên ku Tewrat li wan hatiye barkirin (da ku pê emel bikin) piştre wan ew hilnegirtiye (û wan îman bi Muhemmed neaniye) wekî rewşa kerê ye ku barê kitêban hildigire. Çi pîs mînak e rewşa wan ên ku bi ayetên Xwedê bawerî neanine! Xwedê civata sitemkaran (kafiran) nayîne ser riya rast.

(6) Bibêje: Gelî cihûyan! Heke ji we we ye ku ji bilî mirovan hûn bi tenê dostên Xwedê ne, de haydê mirinê (ji bo xwe) bixwazin eger (bi rastî) hûn (di vê doza xwe de) rastbêj in.

(7) Lê belê cihû ji ber kar û kiryarên ku kirine, ew tu car mirinê naxwazin. Xwedê (bi) zaliman dizane.

(8) Bibêje: Ew mirina ku hûn jê direvin teqez ew dê her bigihê we. Piştre hûn ê bi bal zanayê bi ya nepenî û darîçav ve bên vegerandin. Vêca ew, bi çiqas tiştên we kirî dê we agahdar bike.

9 Gelî yên bawerî anîne! Gava roja înê banga nimêjê hate dayîn, vêca bi bal zikrê Xwedê (nimêja înê) ve lez bikin û dev ji kirîn û firotanê berdin. Ha ev (çûna nimêjê û terka bazarê) eger hûn bizanin ji bo we çêtir e.

10 Gava nimêj hate kirin vêca li ser erdê belav bibin, ji kerema Xwedê (bi karê xwe) bixwazin. Xwedayê xwe pir bi bîr bînin da ku hûn rizgar bibin.

11 (Ya Muhemmed!) Dema wan bazirganiyek an kêf û şahiyek dît, ber pê diçin û te (li ser mînberê) li piyan dihêlin. Bibêje: Ya li cem Xwedê, ji bo we ji kêf û bazirganiyê çêtir e. Xwedê çêtirînê risqdaran e.

## SÛREYÊ MUNAFÎQÛN

Sûreyê Munafîqûn yazdeh (11) ayet e û li Medînê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva Munafîqûn bihuriye û bi mehneya zendîqan e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

1 (Ya Muhemmed!) Gava munafiq tên cem te dibêjin: Em şahdeyiyê didin ku tu pêxemberê Xwedê yî. Xwedê jî dizane ku teqez tu pêxemberê Wî yî. Xwedê teqez şadehiyê dide ku munafiq derewkar in.

2 Sondên xwe (yên ji derew ve) ji bo xwe kirine mertal û xelkê ji riya dînê Xwedê vedigerînin. Bi rastî ya ku ew dikin çiqas pîs e!

3 Ev (kirina wan a pîs û sondên wan jî) bi sedema ku wan (bi ser re) bawerî anî û paşê (di dilda) kafir bûn. Vêca Xwedê

يَٰٓأَيُّهَا ٱلَّذِينَ ءَامَنُوٓاْ إِذَا نُودِيَ لِلصَّلَوٰةِ مِن يَوۡمِ ٱلۡجُمُعَةِ
فَٱسۡعَوۡاْ إِلَىٰ ذِكۡرِ ٱللَّهِ وَذَرُواْ ٱلۡبَيۡعَۚ ذَٰلِكُمۡ خَيۡرٞ لَّكُمۡ إِن كُنتُمۡ
تَعۡلَمُونَ ٩ فَإِذَا قُضِيَتِ ٱلصَّلَوٰةُ فَٱنتَشِرُواْ فِي ٱلۡأَرۡضِ
وَٱبۡتَغُواْ مِن فَضۡلِ ٱللَّهِ وَٱذۡكُرُواْ ٱللَّهَ كَثِيرٗا لَّعَلَّكُمۡ تُفۡلِحُونَ
١٠ وَإِذَا رَأَوۡاْ تِجَٰرَةً أَوۡ لَهۡوًا ٱنفَضُّوٓاْ إِلَيۡهَا وَتَرَكُوكَ قَآئِمٗاۚ قُلۡ
مَا عِندَ ٱللَّهِ خَيۡرٞ مِّنَ ٱللَّهۡوِ وَمِنَ ٱلتِّجَٰرَةِۚ وَٱللَّهُ خَيۡرُ ٱلرَّٰزِقِينَ ١١

آياتها ١١ — سُورَةُ المُنَافِقُونَ — ترتيبها ٦٣

بِسۡمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحۡمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

إِذَا جَآءَكَ ٱلۡمُنَٰفِقُونَ قَالُواْ نَشۡهَدُ إِنَّكَ لَرَسُولُ ٱللَّهِۗ وَٱللَّهُ يَعۡلَمُ
إِنَّكَ لَرَسُولُهُۥ وَٱللَّهُ يَشۡهَدُ إِنَّ ٱلۡمُنَٰفِقِينَ لَكَٰذِبُونَ ١
ٱتَّخَذُوٓاْ أَيۡمَٰنَهُمۡ جُنَّةٗ فَصَدُّواْ عَن سَبِيلِ ٱللَّهِۚ إِنَّهُمۡ سَآءَ مَا كَانُواْ
يَعۡمَلُونَ ٢ ذَٰلِكَ بِأَنَّهُمۡ ءَامَنُواْ ثُمَّ كَفَرُواْ فَطُبِعَ عَلَىٰ قُلُوبِهِمۡ
فَهُمۡ لَا يَفۡقَهُونَ ٣ ۞ وَإِذَا رَأَيۡتَهُمۡ تُعۡجِبُكَ أَجۡسَامُهُمۡۖ
وَإِن يَقُولُواْ تَسۡمَعۡ لِقَوۡلِهِمۡۖ كَأَنَّهُمۡ خُشُبٞ مُّسَنَّدَةٞۖ يَحۡسَبُونَ كُلَّ
صَيۡحَةٍ عَلَيۡهِمۡۚ هُمُ ٱلۡعَدُوُّ فَٱحۡذَرۡهُمۡۚ قَٰتَلَهُمُ ٱللَّهُۖ أَنَّىٰ يُؤۡفَكُونَ ٤

dilê wam mor kir, êdî ew (di rastiya îmanê, qencî û xêra xwe de) têinagihîjin.

4 Dema tu wan dibînî tu ecêbgirtî dimînê ji bejn û bala wan, eger ku biaxivin jî guhê te dê bimînê li axaftina wan. Tu dibêjî ew darên (li ber dîwaran) paldayî ne (ku xêr di wan de nîn e). Ji wan we ye her qîreke ku hebe li dijî wan e. Ew neyar in, xwe ji wan biparêze. Xwedê wan bikuje! Çawa ew (ji heqiyê) berê xwe vedigerînin?

وَإِذَا قِيلَ لَهُمْ تَعَالَوْا يَسْتَغْفِرْ لَكُمْ رَسُولُ اللَّهِ لَوَّوْا رُءُوسَهُمْ
وَرَأَيْتَهُمْ يَصُدُّونَ وَهُم مُّسْتَكْبِرُونَ ﴿٥﴾ سَوَاءٌ عَلَيْهِمْ
أَسْتَغْفَرْتَ لَهُمْ أَمْ لَمْ تَسْتَغْفِرْ لَهُمْ لَن يَغْفِرَ اللَّهُ لَهُمْ إِنَّ
اللَّهَ لَا يَهْدِي الْقَوْمَ الْفَاسِقِينَ ﴿٦﴾ هُمُ الَّذِينَ يَقُولُونَ
لَا تُنفِقُوا عَلَىٰ مَنْ عِندَ رَسُولِ اللَّهِ حَتَّىٰ يَنفَضُّوا وَلِلَّهِ
خَزَائِنُ السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ وَلَٰكِنَّ الْمُنَافِقِينَ لَا يَفْقَهُونَ
﴿٧﴾ يَقُولُونَ لَئِن رَّجَعْنَا إِلَى الْمَدِينَةِ لَيُخْرِجَنَّ الْأَعَزُّ
مِنْهَا الْأَذَلَّ وَلِلَّهِ الْعِزَّةُ وَلِرَسُولِهِ وَلِلْمُؤْمِنِينَ وَلَٰكِنَّ
الْمُنَافِقِينَ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٨﴾ يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا لَا تُلْهِكُمْ
أَمْوَالُكُمْ وَلَا أَوْلَادُكُمْ عَن ذِكْرِ اللَّهِ وَمَن يَفْعَلْ
ذَٰلِكَ فَأُولَٰئِكَ هُمُ الْخَاسِرُونَ ﴿٩﴾ وَأَنفِقُوا مِن مَّا رَزَقْنَاكُم
مِّن قَبْلِ أَن يَأْتِيَ أَحَدَكُمُ الْمَوْتُ فَيَقُولَ رَبِّ لَوْلَا أَخَّرْتَنِي
إِلَىٰ أَجَلٍ قَرِيبٍ فَأَصَّدَّقَ وَأَكُن مِّنَ الصَّالِحِينَ ﴿١٠﴾ وَلَن
يُؤَخِّرَ اللَّهُ نَفْسًا إِذَا جَاءَ أَجَلُهَا وَاللَّهُ خَبِيرٌ بِمَا تَعْمَلُونَ ﴿١١﴾

ترتيبها ٦٤ — سُورَةُ التَّغَابُنِ — آياتها ١٨

(5) Gava ji wan re bê gotin: Werin, bila pêxemberê Xwedê ji bo we lêborînê bixwaze, serê xwe dihejînin û tu wan dibînî ku berê xwe (ji heqiyê) vedigerînin û xwe mezin didêrin.

(6) Tu ji bo wan lêborinê bixwazî û nexwazî, ji wan re wekhev e; Xwedê dê hîç li wan nebore. Bi rastî Xwedê desteya jirêderketiyan nayîne riya rast û durist.

(7) Ew (munafiq)ên ku (ji Ensariyan re) dibêjin: Tu tiştî nedin muhacirên ku li cem Pêxemberê Xwedê ne, da ku ji hev belav bibin û herin. Hal ev e ku gencîneyên asîmanan û erdê yên Xwedê ne. Lê belê munafiq di vê nagihîjin.

(8) Munafiqan digot: Sond be, eger ku em vegeriyan Medînê , ew ên desthilatdar ê xoşewîst (ku ew bi xwe ne) dê yên bêrûmet û reben (ku Peyxember û muhacir in) ji Medînê derxin. Rewş ev e; serkeftin û rûmet her ji bo Xwedê, Pêxemberê wî û mislimanan e. Belê munafiq tênagihîjin.

(9) Gelî yên bawerî anîne! Bila mal û zarokên we, ji zikrê Xwedê, we meşxûl nekin. Kî vê bike ha ew in ên ku xesirîne.

(10) Ji wî risqê ku me daye we (di riya Xwedê de) xerc bikin, beriya ku mirina yekî ji we bê û ku bibêje: Xwedayê min! Bila te mirina min bidaya paş da min sedeqe bidaya û ez bibûma ji qencîkaran!

(11) Xwedê tu car mirina kesî bi paş de naxê dema ku mirina wî were. Xwedê bi ya hûn bikin agahdar e (Ew dê li gorî kar û emelê we, we xelat an jî we ceza bike).

# SÛREYÊ TEXABUN

Sûreyê Texabun hijdeh (18) ayet e. Li Medînê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta 9'em girtiye ku tê de peyva Texabun derbas bûye û bi mehneya xapiyayî û ziyan e.

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ
يُسَبِّحُ لِلّٰهِ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَمَا فِي الْأَرْضِ لَهُ الْمُلْكُ وَلَهُ الْحَمْدُ
وَهُوَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ ١ هُوَ الَّذِي خَلَقَكُمْ فَمِنْكُمْ كَافِرٌ
وَمِنْكُمْ مُؤْمِنٌ وَاللّٰهُ بِمَا تَعْمَلُونَ بَصِيرٌ ٢ خَلَقَ السَّمٰوَاتِ
وَالْأَرْضَ بِالْحَقِّ وَصَوَّرَكُمْ فَأَحْسَنَ صُوَرَكُمْ وَإِلَيْهِ الْمَصِيرُ ٣
يَعْلَمُ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَالْأَرْضِ وَيَعْلَمُ مَا تُسِرُّونَ وَمَا تُعْلِنُونَ وَاللّٰهُ
عَلِيمٌ بِذَاتِ الصُّدُورِ ٤ أَلَمْ يَأْتِكُمْ نَبَؤُا الَّذِينَ كَفَرُوا مِنْ قَبْلُ
فَذَاقُوا وَبَالَ أَمْرِهِمْ وَلَهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ ٥ ذٰلِكَ بِأَنَّهُ كَانَتْ تَأْتِيهِمْ
رُسُلُهُمْ بِالْبَيِّنَاتِ فَقَالُوا أَبَشَرٌ يَهْدُونَنَا فَكَفَرُوا وَتَوَلَّوْا وَاسْتَغْنَى
اللّٰهُ وَاللّٰهُ غَنِيٌّ حَمِيدٌ ٦ زَعَمَ الَّذِينَ كَفَرُوا أَنْ لَنْ يُبْعَثُوا قُلْ بَلٰى وَرَبِّي
لَتُبْعَثُنَّ ثُمَّ لَتُنَبَّؤُنَّ بِمَا عَمِلْتُمْ وَذٰلِكَ عَلَى اللّٰهِ يَسِيرٌ ٧ فَآمِنُوا بِاللّٰهِ
وَرَسُولِهِ وَالنُّورِ الَّذِي أَنْزَلْنَا وَاللّٰهُ بِمَا تَعْمَلُونَ خَبِيرٌ ٨ يَوْمَ
يَجْمَعُكُمْ لِيَوْمِ الْجَمْعِ ذٰلِكَ يَوْمُ التَّغَابُنِ وَمَنْ يُؤْمِنْ بِاللّٰهِ وَيَعْمَلْ
صَالِحًا يُكَفِّرْ عَنْهُ سَيِّئَاتِهِ وَيُدْخِلْهُ جَنَّاتٍ تَجْرِي مِنْ تَحْتِهَا
الْأَنْهَارُ خَالِدِينَ فِيهَا أَبَدًا ذٰلِكَ الْفَوْزُ الْعَظِيمُ ٩

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

(1) Çiqas tiştên ku li erd û asîmanan hene Xwedê tesbîh dikin (ji her kêmasî û pûçiyê pak didêrin), xwedanî û fermandarî, pesn û şêkirî her jê re ne û ew li ser her tiştî qadir e.

(2) Xwedê ye, Ew ê ku (bi vî şeklê xweşik) hûn afirandin, vêca hinek ji we (ulûhiyeta Wî) înkar dikin û hinek ji we jî bawerî tînin. Xwedê bi ya hûn dikin bîner e.

(3) Xwedê erd û asîman bi heqî (û hîkmet) afirandin. Şekil û dirûv dana we, vêca gelek xweşik û hûn bişekil û dirûv kirin. Lêvehewîngera we her bi bal Wî ve ye.

(4) Xwedê bi ya di erd û asîmanan de dizane, bi ya hûn dizî û aşkera dikin jî dizane û Xwedê bi ya di dilan de veşartî jî dizane.

(5) Erê ma xebera wan ên berê kafir bûne negihîştiye we? Vêca wan cezayê kufra xwe tehm kir û (li axiretê jî) ji wan re ezabekî dijwar heye.

(6) Ev (ezabê wan dîtî) bi sebûnet ku pêxemberên wan bi delîl û mucîzeyên aşkera ji bo wan dihatin, vêca digotin: Erê ma çawa însanek dê (bibe peyxember û) me bîne riya rast? Vêca kafir bûn û berê xwe (ji heqiyê) vegerandin. Xwedê jî ne hewceyî baweriya wan bû. Xwedê, dewlemend û hêjayî pesn û spasiyê ye.

(7) Yên kafir hizir kirin ku ew ê piştî mirinê dîsa neyêne saxkirin û vejandin. Bibêje: Nexêr! Sond bi Xwedayê min be; teqez hûn ê bêne saxkirin û hûn ê teqez bi kar û kiryarên xwe bêne agahdarkirin. Ev rewş li ber Xwedê pir hêsan e.

(8) Vêca bi Xwedê û Pêxemberê Wî û bi wê ronahiya (Qurana) ku me hinartî, îman bînin. Xwedê bi kar û kiryarên ku hûn dikin agahdar e.

(9) Roja ku Xwedê ji bo roja civînê (ji bo hesab wergirtinê) we berhev bike, ha ew e roja ku yê xapiyayî (û xesirî)

وَالَّذِينَ كَفَرُوا وَكَذَّبُوا بِآيَاتِنَا أُولَٰئِكَ أَصْحَابُ
النَّارِ خَالِدِينَ فِيهَا ۖ وَبِئْسَ الْمَصِيرُ ﴿١٠﴾ مَا أَصَابَ مِنْ
مُصِيبَةٍ إِلَّا بِإِذْنِ اللَّهِ ۗ وَمَنْ يُؤْمِنْ بِاللَّهِ يَهْدِ قَلْبَهُ ۚ وَاللَّهُ بِكُلِّ
شَيْءٍ عَلِيمٌ ﴿١١﴾ وَأَطِيعُوا اللَّهَ وَأَطِيعُوا الرَّسُولَ ۚ فَإِنْ
تَوَلَّيْتُمْ فَإِنَّمَا عَلَىٰ رَسُولِنَا الْبَلَاغُ الْمُبِينُ ﴿١٢﴾ اللَّهُ لَا إِلَٰهَ
إِلَّا هُوَ ۚ وَعَلَى اللَّهِ فَلْيَتَوَكَّلِ الْمُؤْمِنُونَ ﴿١٣﴾ يَا أَيُّهَا
الَّذِينَ آمَنُوا إِنَّ مِنْ أَزْوَاجِكُمْ وَأَوْلَادِكُمْ عَدُوًّا
لَكُمْ فَاحْذَرُوهُمْ ۚ وَإِنْ تَعْفُوا وَتَصْفَحُوا وَتَغْفِرُوا
فَإِنَّ اللَّهَ غَفُورٌ رَحِيمٌ ﴿١٤﴾ إِنَّمَا أَمْوَالُكُمْ وَأَوْلَادُكُمْ
فِتْنَةٌ ۚ وَاللَّهُ عِنْدَهُ أَجْرٌ عَظِيمٌ ﴿١٥﴾ فَاتَّقُوا اللَّهَ مَا اسْتَطَعْتُمْ
وَاسْمَعُوا وَأَطِيعُوا وَأَنْفِقُوا خَيْرًا لِأَنْفُسِكُمْ ۗ وَمَنْ
يُوقَ شُحَّ نَفْسِهِ فَأُولَٰئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَ ﴿١٦﴾ إِنْ تُقْرِضُوا
اللَّهَ قَرْضًا حَسَنًا يُضَاعِفْهُ لَكُمْ وَيَغْفِرْ لَكُمْ ۚ وَاللَّهُ شَكُورٌ
حَلِيمٌ ﴿١٧﴾ عَالِمُ الْغَيْبِ وَالشَّهَادَةِ الْعَزِيزُ الْحَكِيمُ ﴿١٨﴾

## سُورَةُ الطَّلَاقِ

ترتيبها ٦٥ — آياتها ١٢

derkeve rastê. Kî bi Xwedê îman bîne û karê qenc bike, Xwedê dê gunehên wî jê bibe, dê lê bibore û dê wî bixe bihiştên ku di bin wan de çem diherikin û ew dê her û her di wan de bimînin. Ha ev e serkeftin û rizgariya mezin.

(10) Ew ên ku kafir bûne û wan bi ayetên me bawerî neaniye, ha ew xelkê dojehê ne, ew seraqetî tê de ne. Ew çi pîs lêvegergeh e!

(11) Çi bela û nexweşiyek ku bi ser mirovan de bê, her ew bi destûra Xwedê ye. Kî bi Xwedê bawerî bîne, Xwedê dê dilê wî ji ya rast re veke. Xwedê bi her tiştî zana ye.

(12) Guhdariya Xwedê û Pêxemberî wî bikin. Eger hûn berê xwe (ji îmanê) vegerênin, êdî bizanin ku bes wezîfeya pêxemberê me, ragihandineke ronak û aşkera ye.

(13) Ellah Teala ew Xweda ye ku ji Wî pê ve tu mebûdê rast tun in. Vêca bila bawermend bes xwe bispêrin Ellah Teala.

(14) Gelî yên ku bawerî anîne! Ji jin û zarokên we hin ji bo we neyar in, vêca li wan hişyar bin û xwe ji wan biparêzin. Eger hûn wan efû bikin û li kêmasiyên wan biborin û wan bibexşînin, vêca bi rastî Xwedê gunehveşêr û dilovîn e.

(15) Bi rastî malê we û zaroyên we ji bo we îmtîhan in. Xelata mezin jî li cem Xwedê Teala ye.

(16) Nexwe heya ku hûn dikarin ji Xwedê bitirsin, guhdarî (ya şîretên wî) bikin, bi gotina wî bikin û ji bo qenciya xwe xêran bikin. Kî nefsa xwe ji nemerdiya wê biparêze, ha ew in yên serfiraz û rizgarbûyî.

(17) Eger hûn ji dil malê xwe di riya Xwedê de xerc bikin, Xweda dê ji we re wî (malî) qat bi qat zêde bike û li gunehên we bibore. Xwedayê mezin şukirdar û bêhnfireh e (yanî li hemberî hindikî pir dide û lezê li cezadanê nake).

(18) Xwedê, zanayê nependî û darîçav e, ew e yê serdest ê karbinecih.

# SÛREYÊ TELAQ

Sûreyê Telaq dozdeh (12) ayet e û li Medînê daketiye. Navê sûre ji ayeta pêşîn hatiye ku tê de peyva Telaq derbas bûye û bi mehneya jinberdan e.

بِسۡمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحۡمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ
يَٰٓأَيُّهَا ٱلنَّبِيُّ إِذَا طَلَّقۡتُمُ ٱلنِّسَآءَ فَطَلِّقُوهُنَّ لِعِدَّتِهِنَّ وَأَحۡصُواْ
ٱلۡعِدَّةَۖ وَٱتَّقُواْ ٱللَّهَ رَبَّكُمۡۖ لَا تُخۡرِجُوهُنَّ مِنۢ بُيُوتِهِنَّ
وَلَا يَخۡرُجۡنَ إِلَّآ أَن يَأۡتِينَ بِفَٰحِشَةٖ مُّبَيِّنَةٖۚ وَتِلۡكَ حُدُودُ
ٱللَّهِۚ وَمَن يَتَعَدَّ حُدُودَ ٱللَّهِ فَقَدۡ ظَلَمَ نَفۡسَهُۥۚ لَا تَدۡرِي لَعَلَّ
ٱللَّهَ يُحۡدِثُ بَعۡدَ ذَٰلِكَ أَمۡرٗا ١ فَإِذَا بَلَغۡنَ أَجَلَهُنَّ فَأَمۡسِكُوهُنَّ
بِمَعۡرُوفٍ أَوۡ فَارِقُوهُنَّ بِمَعۡرُوفٖ وَأَشۡهِدُواْ ذَوَيۡ عَدۡلٖ مِّنكُمۡ
وَأَقِيمُواْ ٱلشَّهَٰدَةَ لِلَّهِۚ ذَٰلِكُمۡ يُوعَظُ بِهِۦ مَن كَانَ يُؤۡمِنُ
بِٱللَّهِ وَٱلۡيَوۡمِ ٱلۡأٓخِرِۚ وَمَن يَتَّقِ ٱللَّهَ يَجۡعَل لَّهُۥ مَخۡرَجٗا ٢ وَيَرۡزُقۡهُ
مِنۡ حَيۡثُ لَا يَحۡتَسِبُۚ وَمَن يَتَوَكَّلۡ عَلَى ٱللَّهِ فَهُوَ حَسۡبُهُۥٓۚ إِنَّ ٱللَّهَ
بَٰلِغُ أَمۡرِهِۦۚ قَدۡ جَعَلَ ٱللَّهُ لِكُلِّ شَيۡءٖ قَدۡرٗا ٣ وَٱلَّٰٓـِٔي يَئِسۡنَ
مِنَ ٱلۡمَحِيضِ مِن نِّسَآئِكُمۡ إِنِ ٱرۡتَبۡتُمۡ فَعِدَّتُهُنَّ ثَلَٰثَةُ أَشۡهُرٖ
وَٱلَّٰٓـِٔي لَمۡ يَحِضۡنَۚ وَأُوْلَٰتُ ٱلۡأَحۡمَالِ أَجَلُهُنَّ أَن يَضَعۡنَ حَمۡلَهُنَّۚ
وَمَن يَتَّقِ ٱللَّهَ يَجۡعَل لَّهُۥ مِنۡ أَمۡرِهِۦ يُسۡرٗا ٤ ذَٰلِكَ أَمۡرُ ٱللَّهِ أَنزَلَهُۥٓ
إِلَيۡكُمۡۚ وَمَن يَتَّقِ ٱللَّهَ يُكَفِّرۡ عَنۡهُ سَيِّـَٔاتِهِۦ وَيُعۡظِمۡ لَهُۥٓ أَجۡرًا ٥

## Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn

(1) Hey Pêxember! Gava hûn bixwazin jinan berdin, wan di dema paqijiya wan de berdin, (piştî we ew berdan) iddeyê wan bijimêrin (û tomar bikin). Ji Xwedayê xwe Ellah Teala bitirsin (ku iddeyê wan ne kêm ne jî zêde bihesibênin). Wan ji xaniyên wan dernexin û bila ew bi xwe jî (heta di iddeyê xwe de ne, ji xaniyên xwe) dernekevin. Ji bilî ku ew fehşîtiyeke aşkera bikin (yanî bi gotin û bizavên xwe xelkê malê tengezar bikin). Ev tixûb û ahkamên Xwedê ne. Kî bide ser tixûb û ahkamên Xwedê, bi rastî wî li xwe sitemkarî kiriye. Tu nizanî; dibe ku Xwedê piştî berdana jinan rewşeke din derîne holê (eger ku ji mala xwe dernekevin û tê de bimînin dibe ku li hev jî bizivirin).

(2) Dema wan iddeyê xwe temam kir, vêca ya bi rindî li wan vegerin an jî bi rindî ji wan cuda bibin (û wan berdin). Ji nav xwe du mêrên adil (li ser berdana wan an li ser zivirandina wan) bikin şahid û bila ji bo Xwedê (bi duristî) şahdeyiyê bidin. Ha ev biryar û şîret e ji bo wî kesê ku bi Xwedê û roja axiretê bawerî tîne. Kî biryar û hukmên Xwedê biparêze, Xwedê dê riyekê jê re veke…

(3) Bi awayekî ku hizir nedikir dê risqê wî bidê. Kî xwe bispêre Xwedê vêca ew besî wî ye. Bêguman Xweda fermana xwe bi cih tîne, (lê belê) Xwedê ji bo her tiştî miqdar (û endazek) daniye.

(4) Ew jinên ku ji xwîna heyzê bêhêvî bûne (ku temen mezin in) û ew ên ku hîç neketinê (xwîna heyzê nedîtine), eger hûn (di iddeyê wan de) ketin gumanê, civanê (bendemayîna) wan sê meh e. Ew ên ku li halekî ne dema lihêvîmayîna wan danîna barê wan e (çêbûna zarokê ye). Kî biryar û hukimên Xwedê biparêze, Xwedê dê karê wî jê re hêsan bike.

(5) Ha ev ên hatin gotin, hukim û biryarên Xwedê ne ku ji we re şandine. Kî biryar û hukimên Xwedê biparêze, Xwêdê dê gunehên wî veşêre û perûya wî mezin bike.

أَسْكِنُوهُنَّ مِنْ حَيْثُ سَكَنتُم مِّن وُجْدِكُمْ وَلَا تُضَآرُّوهُنَّ لِتُضَيِّقُوا۟
عَلَيْهِنَّ ۚ وَإِن كُنَّ أُو۟لَـٰتِ حَمْلٍ فَأَنفِقُوا۟ عَلَيْهِنَّ حَتَّىٰ يَضَعْنَ حَمْلَهُنَّ ۚ
فَإِنْ أَرْضَعْنَ لَكُمْ فَـَٔاتُوهُنَّ أُجُورَهُنَّ ۖ وَأْتَمِرُوا۟ بَيْنَكُم بِمَعْرُوفٍ ۖ وَإِن
تَعَاسَرْتُمْ فَسَتُرْضِعُ لَهُۥٓ أُخْرَىٰ ﴿٦﴾ لِيُنفِقْ ذُو سَعَةٍ مِّن سَعَتِهِۦ ۖ
وَمَن قُدِرَ عَلَيْهِ رِزْقُهُۥ فَلْيُنفِقْ مِمَّآ ءَاتَىٰهُ ٱللَّهُ ۚ لَا يُكَلِّفُ ٱللَّهُ نَفْسًا
إِلَّا مَآ ءَاتَىٰهَا ۚ سَيَجْعَلُ ٱللَّهُ بَعْدَ عُسْرٍ يُسْرًا ﴿٧﴾ وَكَأَيِّن مِّن قَرْيَةٍ
عَتَتْ عَنْ أَمْرِ رَبِّهَا وَرُسُلِهِۦ فَحَاسَبْنَـٰهَا حِسَابًا شَدِيدًا وَعَذَّبْنَـٰهَا
عَذَابًا نُّكْرًا ﴿٨﴾ فَذَاقَتْ وَبَالَ أَمْرِهَا وَكَانَ عَـٰقِبَةُ أَمْرِهَا خُسْرًا ﴿٩﴾
أَعَدَّ ٱللَّهُ لَهُمْ عَذَابًا شَدِيدًا ۖ فَٱتَّقُوا۟ ٱللَّهَ يَـٰٓأُو۟لِى ٱلْأَلْبَـٰبِ ٱلَّذِينَ ءَامَنُوا۟ ۚ
قَدْ أَنزَلَ ٱللَّهُ إِلَيْكُمْ ذِكْرًا ﴿١٠﴾ رَّسُولًا يَتْلُوا۟ عَلَيْكُمْ ءَايَـٰتِ ٱللَّهِ مُبَيِّنَـٰتٍ
لِّيُخْرِجَ ٱلَّذِينَ ءَامَنُوا۟ وَعَمِلُوا۟ ٱلصَّـٰلِحَـٰتِ مِنَ ٱلظُّلُمَـٰتِ إِلَى ٱلنُّورِ ۚ
وَمَن يُؤْمِنۢ بِٱللَّهِ وَيَعْمَلْ صَـٰلِحًا يُدْخِلْهُ جَنَّـٰتٍ تَجْرِى مِن تَحْتِهَا
ٱلْأَنْهَـٰرُ خَـٰلِدِينَ فِيهَآ أَبَدًا ۖ قَدْ أَحْسَنَ ٱللَّهُ لَهُۥ رِزْقًا ﴿١١﴾ ٱللَّهُ ٱلَّذِى خَلَقَ
سَبْعَ سَمَـٰوَٰتٍ وَمِنَ ٱلْأَرْضِ مِثْلَهُنَّ يَتَنَزَّلُ ٱلْأَمْرُ بَيْنَهُنَّ لِتَعْلَمُوٓا۟ أَنَّ
ٱللَّهَ عَلَىٰ كُلِّ شَىْءٍ قَدِيرٌ وَأَنَّ ٱللَّهَ قَدْ أَحَاطَ بِكُلِّ شَىْءٍ عِلْمًۢا ﴿١٢﴾

(6) Jinên berdayî li gorî taqeta xwe li cihê ku hûn lê bi cih bin (wan jî) bi cih bikin. Der barê wan de destengiyê mekin, da ku bi vî awayî (bi derketin û gerewdayînê) tengezar bibin. Eger ew li halekî bin (ducanî bin), heta barê xwe deynin nefeqên wan bidin. Heke ew ji we re zarok şîr dayî bikin ucreta wan bidin û di neqeba xwe de bi rindî (û awayekî munasib) li hev bên. Eger we li hev nekir, bila bavê (zarokî) ji zarokî re şîrdayiyeke din bi ucret bigire.

(7) Yê destfireh bila nefeqê li gorî destfirehiya xwe bide. Kesê destteng jî ji malê ku Xwedê daye wî, bila nefeqê bide. Xwedê li tu kesî zêdetirî ya ku dayê, bar lê nake. Xwedê dê piştî destengiyê destfirehiyê bîne.

(8) Gelek ji xelkê welatan ji fermana Xwedayê xwe û peyxemberê Wî derketin, vêca me ew kişandin hesabekî dijwar û me ew bi ezabekî kesnedîtî ceza kirin.

(9) Wan cezayê kar û kiryarên xwe tehm kir û dawiya rewşa wan jî ziyan e.

(10) Xwedê ji wan re ezabekî dijwar amade kiriye. Vêca gelî aqilmendên ku we bawerî anî, ji Xwedê bitirsin. Ma ne Xwedê bi rastî jî ji bo we kitêbek şandiye (vêca ji we re hêncet nîn e).

(11) (Xwedê ji bo we) Pêxemberek jî şand ku ayetên Xwedê yên ronker ji we re dixwîne, da ku yên bawerî anî û karê qenc kirin ji tarîtiyên (nezanîn û kafiriyê) derîne ronahiya (bawerî û zanînê). Kî bi Xwedê bawerî bîne û karê bifeyde bike, Xweda dê wî bixe bihiştên wisa ku di binê wan de çem diherikin û ew ê heta hetayê tê de bin. Bi rastî jî Xwedê risqekî pak û paqij daye wî.

(12) Xwedê ye yê ku heft asîman afirandin û ji erdê jî ew qas afirandin. Peyxam û fermana Xwedê di navbera van de tê û diçe, da ku hûn bizanin ku bi rastî Xwedê li ser her tiştî qadir e û (da hûn bizanin) ku bi rastî zanîna Xwedê dor li her tiştî girtiye.

# SÛREYÊ TEHRÎM

Sûreyê Tehrîm, dozdeh (12) ayet e. Li Medînê daketiye û nav ji ayeta pêşîn hatiye ku tê de peyva Heram derbas bûye û bi mehneya qedexekirin e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

1 Hey Pêxember! Ji bo çi ya Xwedê ji te re helal kiriye, ji bo razîkirina xanimên xwe, tu li xwe heram (û qedexe) dikî? Hal ev e Xwedê (ji bo te) gunehjêbir û dilovîn e.

2 Bêguman Xwedê, ji bo we hukim danî ku (bi dayîna kefaretê) hûn ji sondên xwe vegerin. Xwedê dost û arîkarê we ye. Her ew e yê ’Elîm yê Hekîm.

3 Dema Pêxember, bi dizî peyvek ji xanimên xwe ji yekê re gotî (ku ew Hafse bû), vêca gava (Hefsa) ew peyv (ji Aîşe re) eşkera kir; Xwedê jî ev yek ji Pêxember re ragihand, Pêxember jî hinek ji wê peyvê (ya Hefsayê ji Aîşe re gotî) jê re aşkera kir û hinek jî hişt. Gava ku Pêxember ew peyv jê re diyar kir, (Hefsayê) got: Kê ev ji te re got? Pêxember (jê re) got: Xwedayê zana û haydar ji min re got.

4 Eger hûn her du (mexsed pê Aîşe û Hefsa ne) tobe bikin -jixwe tobe ji we re baştir e- vêca bi rastî dilê we berê xwe daye başiyê û dilê we digel Pêxember rast e. Eger hûn li dijî Pêxember ji hev re bibin piştevan, vêca bi rastî (hûn bizanin) ku Xwedê Cibraîl û qencên bawermend dost û arîkarê wî ne. Piştî vê milyaket hemû jî arîkarên wî ne.

سُورَةُ التَّحۡرِيمِ — آياتها ١٢ — ترتيبها ٦٦

بِسۡمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحۡمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ
يَٰٓأَيُّهَا ٱلنَّبِيُّ لِمَ تُحَرِّمُ مَآ أَحَلَّ ٱللَّهُ لَكَۖ تَبۡتَغِي مَرۡضَاتَ أَزۡوَٰجِكَۚ وَٱللَّهُ
غَفُورٞ رَّحِيمٞ ١ قَدۡ فَرَضَ ٱللَّهُ لَكُمۡ تَحِلَّةَ أَيۡمَٰنِكُمۡۚ وَٱللَّهُ مَوۡلَىٰكُمۡۖ
وَهُوَ ٱلۡعَلِيمُ ٱلۡحَكِيمُ ٢ وَإِذۡ أَسَرَّ ٱلنَّبِيُّ إِلَىٰ بَعۡضِ أَزۡوَٰجِهِۦ حَدِيثٗا
فَلَمَّا نَبَّأَتۡ بِهِۦ وَأَظۡهَرَهُ ٱللَّهُ عَلَيۡهِ عَرَّفَ بَعۡضَهُۥ وَأَعۡرَضَ عَنۢ بَعۡضٖۖ
فَلَمَّا نَبَّأَهَا بِهِۦ قَالَتۡ مَنۡ أَنۢبَأَكَ هَٰذَاۖ قَالَ نَبَّأَنِيَ ٱلۡعَلِيمُ ٱلۡخَبِيرُ
٣ إِن تَتُوبَآ إِلَى ٱللَّهِ فَقَدۡ صَغَتۡ قُلُوبُكُمَاۖ وَإِن تَظَٰهَرَا عَلَيۡهِ
فَإِنَّ ٱللَّهَ هُوَ مَوۡلَىٰهُ وَجِبۡرِيلُ وَصَٰلِحُ ٱلۡمُؤۡمِنِينَۖ وَٱلۡمَلَٰٓئِكَةُ
بَعۡدَ ذَٰلِكَ ظَهِيرٌ ٤ عَسَىٰ رَبُّهُۥٓ إِن طَلَّقَكُنَّ أَن يُبۡدِلَهُۥٓ أَزۡوَٰجًا
خَيۡرٗا مِّنكُنَّ مُسۡلِمَٰتٖ مُّؤۡمِنَٰتٖ قَٰنِتَٰتٖ تَٰٓئِبَٰتٍ عَٰبِدَٰتٖ سَٰٓئِحَٰتٖ
ثَيِّبَٰتٖ وَأَبۡكَارٗا ٥ يَٰٓأَيُّهَا ٱلَّذِينَ ءَامَنُواْ قُوٓاْ أَنفُسَكُمۡ وَأَهۡلِيكُمۡ
نَارٗا وَقُودُهَا ٱلنَّاسُ وَٱلۡحِجَارَةُ عَلَيۡهَا مَلَٰٓئِكَةٌ غِلَاظٞ شِدَادٞ
لَّا يَعۡصُونَ ٱللَّهَ مَآ أَمَرَهُمۡ وَيَفۡعَلُونَ مَا يُؤۡمَرُونَ ٦ يَٰٓأَيُّهَا
ٱلَّذِينَ كَفَرُواْ لَا تَعۡتَذِرُواْ ٱلۡيَوۡمَۖ إِنَّمَا تُجۡزَوۡنَ مَا كُنتُمۡ تَعۡمَلُونَ ٧

5 Eger Pêxember we berde, Xwedayê wî di şûna we de hinek jinên ji we çêtir û baştir, ji jinebî û keçikan dê bidê ku ew jin misliman bin, bawermend bin, îtaetkar bin, tobedar bin, îbadetkar bin, rojîgir bin (yan jî di rêka Xwedê de rêwingî bin).

6 Gelî yên ku bawerî anîne! Xwe û malbata xwe ji agirekî biparêzin ku ardûyê (şewata) wî mirov û kevir in, li ser wî (agirî) melayîketên dilstûr û dijwar hene, li ber fermana Xwedê ranabin û ya ku fermana wan pê hatî kirin, dikin.

يَٰٓأَيُّهَا ٱلَّذِينَ ءَامَنُوا۟ تُوبُوٓا۟ إِلَى ٱللَّهِ تَوْبَةً نَّصُوحًا عَسَىٰ رَبُّكُمْ
أَن يُكَفِّرَ عَنكُمْ سَيِّـَٔاتِكُمْ وَيُدْخِلَكُمْ جَنَّـٰتٍ تَجْرِى
مِن تَحْتِهَا ٱلْأَنْهَـٰرُ يَوْمَ لَا يُخْزِى ٱللَّهُ ٱلنَّبِىَّ وَٱلَّذِينَ ءَامَنُوا۟
مَعَهُۥ ۖ نُورُهُمْ يَسْعَىٰ بَيْنَ أَيْدِيهِمْ وَبِأَيْمَـٰنِهِمْ يَقُولُونَ رَبَّنَآ
أَتْمِمْ لَنَا نُورَنَا وَٱغْفِرْ لَنَآ ۖ إِنَّكَ عَلَىٰ كُلِّ شَىْءٍ قَدِيرٌ ﴿٨﴾
يَـٰٓأَيُّهَا ٱلنَّبِىُّ جَـٰهِدِ ٱلْكُفَّارَ وَٱلْمُنَـٰفِقِينَ وَٱغْلُظْ عَلَيْهِمْ ۚ
وَمَأْوَىٰهُمْ جَهَنَّمُ ۖ وَبِئْسَ ٱلْمَصِيرُ ﴿٩﴾ ضَرَبَ ٱللَّهُ مَثَلًا
لِّلَّذِينَ كَفَرُوا۟ ٱمْرَأَتَ نُوحٍ وَٱمْرَأَتَ لُوطٍ ۖ كَانَتَا تَحْتَ
عَبْدَيْنِ مِنْ عِبَادِنَا صَـٰلِحَيْنِ فَخَانَتَاهُمَا فَلَمْ يُغْنِيَا عَنْهُمَا
مِنَ ٱللَّهِ شَيْـًٔا وَقِيلَ ٱدْخُلَا ٱلنَّارَ مَعَ ٱلدَّٰخِلِينَ ﴿١٠﴾
وَضَرَبَ ٱللَّهُ مَثَلًا لِّلَّذِينَ ءَامَنُوا۟ ٱمْرَأَتَ فِرْعَوْنَ إِذْ
قَالَتْ رَبِّ ٱبْنِ لِى عِندَكَ بَيْتًا فِى ٱلْجَنَّةِ وَنَجِّنِى مِن فِرْعَوْنَ
وَعَمَلِهِۦ وَنَجِّنِى مِنَ ٱلْقَوْمِ ٱلظَّـٰلِمِينَ ﴿١١﴾ وَمَرْيَمَ ٱبْنَتَ
عِمْرَٰنَ ٱلَّتِىٓ أَحْصَنَتْ فَرْجَهَا فَنَفَخْنَا فِيهِ مِن رُّوحِنَا
وَصَدَّقَتْ بِكَلِمَـٰتِ رَبِّهَا وَكُتُبِهِۦ وَكَانَتْ مِنَ ٱلْقَـٰنِتِينَ ﴿١٢﴾

(7) Gelî yên kafir bûne! Îro lêborîna xwe nexwazin. Hûn dê tenê cezayê kirinên xwe bikişînin.

(8) Gelî bawermendan! Berê xwe bidin Xwedê û bi tobeyeke ji dil û can tobe bikin. (Eger hûn ji dil û can tobe bikin) hêvî heye ku Rebbê we li gunehên we bibore û we bixe bihiştên ku di binê wan de çem diherikin. Ew roja ku Xwedayê Bilind, Pêxember û bawermendên ku ligel wî ne, riswa nake û nade şermê, (wê rojê) ronahiya wan dê li pêşî û rexê wan ê rastê biçe. Dibêjin: Xwedayê me! Ronahiya me temam bike û me bibexşîne, bi rastî jî tu li ser her tiştî xwedanhêz î.

(9) Hey Pêxember! Li hember kafir û munafiqan cîhada bike û li ser wan dijwar bibe. Cihê wan cehenem e. Ew çi pîsecih e!

(10) Ellah Teala ji yên kafir re jina Nûh Pêxember û jina Lût Pêxember nimûne anîne. Ev her du jin di bin mehra du bendeyên me yên salih de bûn û (bi kafirbûna xwe) wan her du jinan xayîntî li Nûh û Lût Pêxember kirin (ne xiyaneta namûsê, jina Nûh digot ku Nûh dîn e, jina Lût jî mêvanê wî aşkera dikirin). Vêca mêrên wan (digel ku pêxember bûn) nikarîn ezabê Xwedê li ser wan bidin alî. Ji her du jinan re hate gotin: De haydê hûn jî ligel yên ku diçin êgir, biçin êgir!

(11) Xwedê ji yên bawermend re nimûne ji jina Firewn aniye. Dema gotibû: Xwedayê min! Ji bo min li cem xwe li bihiştê malekê çêke, min ji Firewn û karê wî xelas bike û min ji wê civata zalim rizgar bike!

(12) Xwedê (ji bawermendan re) Meryema keça Îmranî dike nimûne, ew a ku namûsa xwe parastî. Vêca qasidê me Cibrîl, bi fermana me pifkire berîka kirasê wê (vêca bi Îsa ew ducanî bû). Wê bawerî bi şerîeta Xwedayê xwe û kitêbên wî anî û ew ji îtaetkaran bû.

# SÛREYÊ MULK

Sûreyê Mulk sî (30) ayet e û li Mekkê daketiye. Sûre, navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva El-Mulk derbas bûye û bi mehneya desthilatî û hukmranî ye. Hinek navên vî sûreyî yên din jî ev in: Tebareke, Munciye, Mucadele, Manî' û Waqiye. Der barê vî sûreyî de pir hedîs hene û didin zanîn ku kesê her şev wî bixwîne, xêreke mezin ji xwe re hasil dike.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

1 Ew Xwedayê ku xwedanî û fermandarî bi destê Wî ye, pak û pîroz e û ew li ser her tiştî qadir e.

2 Xwedê mirin û jiyan afirandin da ku we biceribîne; ka kar û kiryarên kê ji we çêtir e. Her ew e yê 'Ezîz yê Xefûr.

3 Ew Xwedayê ku heft tebeq asîman di ser hev re ahengsaz çêkirine, tu yê di çêkirina Xwedayê rehman de tu kêmasî û nakokiyê nebînî. Vêca de berê xwe bidê ma tu kêmasiyekê tê de dibînî?

4 Paşê dîsa berê xwe lê vegerîne, baş bala xwe bidê (ka tu eybekê tê de dibînî?). Çavên te dê reben û westiyayî li te vegerin.

5 Bi rastî Me asîmanê dinyayê bi stêran xemilandiye. Me ew (stêr) ji bo recimandina şeytanan kirine têwer û me ji bo wan ezabê bipêt amade kiriye.

6 Ji bo wan ên ku Rebbê xwe mandel dikin ezabê dojehê heye. Ew çi pîsewar e!

7 Gava ew (kafir) di cehnemê tên werkirin, dengekî bihêrs î kirêt jê tê û ew di nav xwe de dikele.

8 Cehenem ji hêrsa xwe hindik dimîne ku xwe bixwe û ji hev biteqe! Çi gava melayîket komekê ji kafiran diavêjinê, zebaniyên wê ji wan dipirsin; erê ma ji bo we pêxamber nehatibûn (ku ji ezabê vê rojê we bitirsînin)?

سُورَةُ المُلْك — ترتيبها ٦٧ — آياتها ٣٠

بِسۡمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحۡمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

تَبَٰرَكَ ٱلَّذِي بِيَدِهِ ٱلۡمُلۡكُ وَهُوَ عَلَىٰ كُلِّ شَيۡءٖ قَدِيرٌ ١ ٱلَّذِي خَلَقَ
ٱلۡمَوۡتَ وَٱلۡحَيَوٰةَ لِيَبۡلُوَكُمۡ أَيُّكُمۡ أَحۡسَنُ عَمَلٗاۚ وَهُوَ ٱلۡعَزِيزُ ٱلۡغَفُورُ ٢
ٱلَّذِي خَلَقَ سَبۡعَ سَمَٰوَٰتٖ طِبَاقٗاۖ مَّا تَرَىٰ فِي خَلۡقِ ٱلرَّحۡمَٰنِ مِن
تَفَٰوُتٖۖ فَٱرۡجِعِ ٱلۡبَصَرَ هَلۡ تَرَىٰ مِن فُطُورٖ ٣ ثُمَّ ٱرۡجِعِ ٱلۡبَصَرَ كَرَّتَيۡنِ
يَنقَلِبۡ إِلَيۡكَ ٱلۡبَصَرُ خَاسِئٗا وَهُوَ حَسِيرٞ ٤ وَلَقَدۡ زَيَّنَّا ٱلسَّمَآءَ
ٱلدُّنۡيَا بِمَصَٰبِيحَ وَجَعَلۡنَٰهَا رُجُومٗا لِّلشَّيَٰطِينِۖ وَأَعۡتَدۡنَا لَهُمۡ عَذَابَ
ٱلسَّعِيرِ ٥ وَلِلَّذِينَ كَفَرُواْ بِرَبِّهِمۡ عَذَابُ جَهَنَّمَۖ وَبِئۡسَ ٱلۡمَصِيرُ
٦ إِذَآ أُلۡقُواْ فِيهَا سَمِعُواْ لَهَا شَهِيقٗا وَهِيَ تَفُورُ ٧ تَكَادُ تَمَيَّزُ
مِنَ ٱلۡغَيۡظِۖ كُلَّمَآ أُلۡقِيَ فِيهَا فَوۡجٞ سَأَلَهُمۡ خَزَنَتُهَآ أَلَمۡ يَأۡتِكُمۡ نَذِيرٞ ٨
قَالُواْ بَلَىٰ قَدۡ جَآءَنَا نَذِيرٞ فَكَذَّبۡنَا وَقُلۡنَا مَا نَزَّلَ ٱللَّهُ مِن شَيۡءٍ إِنۡ أَنتُمۡ
إِلَّا فِي ضَلَٰلٖ كَبِيرٖ ٩ وَقَالُواْ لَوۡ كُنَّا نَسۡمَعُ أَوۡ نَعۡقِلُ مَا كُنَّا فِيٓ أَصۡحَٰبِ
ٱلسَّعِيرِ ١٠ فَٱعۡتَرَفُواْ بِذَنۢبِهِمۡ فَسُحۡقٗا لِّأَصۡحَٰبِ ٱلسَّعِيرِ ١١
إِنَّ ٱلَّذِينَ يَخۡشَوۡنَ رَبَّهُم بِٱلۡغَيۡبِ لَهُم مَّغۡفِرَةٞ وَأَجۡرٞ كَبِيرٞ ١٢

9 Di bersiva xwe de, gotin: Rast e, bi rastî pêxember ji bo me hatin, vêca me bawerî bi wan neanî û me got: Xwedê tu pêxember neşandiye, hûn bes di nav jirêderketineke mezin de ne!

10 Gotin: Eger me guh bidaye pêxemberan an jî me fehm bikira vêga em nedibûn ji xelkê dojehê!

11 Vêca li gunehên xwe mikur hatin. Nexwe bila dojehî bimirin û dûr bin ji dilovaniya Xwedê!

12 Bi rastî ewên ku ji nedîtî û nebînayî ve ji Xwedayê xwe ditirsin, ji wan re lêborîn û perûyeke mezin heye.

13 Hûn gotina xwe dixwazin bi dizî yan jî aşkera bibêjin, bi rastî Xwedê her bi ya di dilan de dizane.

وَأَسِرُّوا۟ قَوْلَكُمْ أَوِ ٱجْهَرُوا۟ بِهِۦٓ ۖ إِنَّهُۥ عَلِيمٌۢ بِذَاتِ ٱلصُّدُورِ ﴿١٣﴾ أَلَا
يَعْلَمُ مَنْ خَلَقَ وَهُوَ ٱللَّطِيفُ ٱلْخَبِيرُ ﴿١٤﴾ هُوَ ٱلَّذِى جَعَلَ لَكُمُ
ٱلْأَرْضَ ذَلُولًا فَٱمْشُوا۟ فِى مَنَاكِبِهَا وَكُلُوا۟ مِن رِّزْقِهِۦ ۖ وَإِلَيْهِ ٱلنُّشُورُ
﴿١٥﴾ ءَأَمِنتُم مَّن فِى ٱلسَّمَآءِ أَن يَخْسِفَ بِكُمُ ٱلْأَرْضَ فَإِذَا هِىَ
تَمُورُ ﴿١٦﴾ أَمْ أَمِنتُم مَّن فِى ٱلسَّمَآءِ أَن يُرْسِلَ عَلَيْكُمْ حَاصِبًا ۖ
فَسَتَعْلَمُونَ كَيْفَ نَذِيرِ ﴿١٧﴾ وَلَقَدْ كَذَّبَ ٱلَّذِينَ مِن قَبْلِهِمْ فَكَيْفَ
كَانَ نَكِيرِ ﴿١٨﴾ أَوَلَمْ يَرَوْا۟ إِلَى ٱلطَّيْرِ فَوْقَهُمْ صَٰٓفَّٰتٍ وَيَقْبِضْنَ ۚ مَا
يُمْسِكُهُنَّ إِلَّا ٱلرَّحْمَٰنُ ۚ إِنَّهُۥ بِكُلِّ شَىْءٍۭ بَصِيرٌ ﴿١٩﴾ أَمَّنْ هَٰذَا ٱلَّذِى
هُوَ جُندٌ لَّكُمْ يَنصُرُكُم مِّن دُونِ ٱلرَّحْمَٰنِ ۚ إِنِ ٱلْكَٰفِرُونَ إِلَّا فِى غُرُورٍ
﴿٢٠﴾ أَمَّنْ هَٰذَا ٱلَّذِى يَرْزُقُكُمْ إِنْ أَمْسَكَ رِزْقَهُۥ ۚ بَل لَّجُّوا۟ فِى عُتُوٍّ
وَنُفُورٍ ﴿٢١﴾ أَفَمَن يَمْشِى مُكِبًّا عَلَىٰ وَجْهِهِۦٓ أَهْدَىٰٓ أَمَّن يَمْشِى سَوِيًّا
عَلَىٰ صِرَٰطٍ مُّسْتَقِيمٍ ﴿٢٢﴾ قُلْ هُوَ ٱلَّذِىٓ أَنشَأَكُمْ وَجَعَلَ لَكُمُ ٱلسَّمْعَ
وَٱلْأَبْصَٰرَ وَٱلْأَفْـِٔدَةَ ۖ قَلِيلًا مَّا تَشْكُرُونَ ﴿٢٣﴾ قُلْ هُوَ ٱلَّذِى ذَرَأَكُمْ
فِى ٱلْأَرْضِ وَإِلَيْهِ تُحْشَرُونَ ﴿٢٤﴾ وَيَقُولُونَ مَتَىٰ هَٰذَا ٱلْوَعْدُ إِن كُنتُمْ
صَٰدِقِينَ ﴿٢٥﴾ قُلْ إِنَّمَا ٱلْعِلْمُ عِندَ ٱللَّهِ وَإِنَّمَآ أَنَا۠ نَذِيرٌ مُّبِينٌ ﴿٢٦﴾

(14) Erê ma ew Xwedayê ku mirov çêkirine pê nizane? Her ew e yê Letîf yê Xebîr (hûrbînerê kûrbîner e û bi her tiştî agahdar e).
**Letîf:** Ew ê ku bi heqîqeta her tiştî, bi hûrê wî û girê wî zana ye.
**Xebîr:** Ew ê ku bi kirinên bendeyên xwe, yên aşkera û nehênî agahdar e.

(15) Xwedê ye ew ê ku erd ji bo we sernerm (û hêsan) kiriye. Vêca di nav her aliyên wê de bigerin, ji risqê ku Xwedê daye we bixwin û veger (a ji bo hesabwergirtinê) tenê bi bal Wî ve ye.

(16) Erê ma hûn ji Wî Xwedayê li jor ewle ne ku ew di erdê de we nebe xwarê. Ha we dît ku erd dilerizê?

(17) Erê ma hûn ji Wî Xwedayê li jor piştrast in ku kevirbaranekê bi ser we de nerijîne? Vêca hûn ê bizanin ka tirsandina min çawan e?

(18) Bi rastî yên beriya van (pûtperestan) jî bawerî bi (pêxemberên xwe) neanîn. Vêca li hemberî înkara wan (de binêre) ka ezabê min çawa bû?!

(19) Ma ew li teyran nanêrin ku di ser wan re difirin, perên xwe vedikin û digirin? Ji Xwedayê rehman pê ve (çi tişt) wan (li hewayê) nagire. Bi rastî ew bi her tiştî bîner e.

(20) Erê ma ji bilî Xwedê, ew kî ye ku ji bo we bibe leşker ku arîkariya we bike? Bi rastî kafir her di nav xapandineke aşkera de ne (şeytan wan dixapîne û nahêle ew bawerî bînin.)

(21) Erê ma ku Xwedê risqê xwe li ser we bibire, ma kî heye ku bikare risq bide we? Nexêr, belkî wan xwe di çavsorî û nefretê de berdane û rikdariyê dikin.

(22) Erê (bifikirin) ma kesê ku li ser rûyê xwe bimeşe duristtir e (ku dê bigihîje armanca xwe), yan ew kesê ku li ser piyan di riyeke rast de dimeşe?

(23) Bibêje: Xwedê ye, ew ê ku hûn ji nû ve xuliqandine û ji bo we guh, çav û dil çêkirine. Hûn çiqas kêm şukrê Xwedê dikin!

(24) Bibêje: Xweda ye, yê ku hûn dane ser erdê û tê de belav kirine û hûn ê bes bi bal Wî ve bêne civandin.

(25) Ew dibêjin: Eger (bi rastî) hûn rast dibêjin, de ka ev soz (a tu me pê ditirsînê) kengê ye?

(26) Bibêje: Bi rastî zanîna wê li cem Xwedê ye. Ez tenê hişyarker û agahdêr im.

(27) Êdî dema ezab û nexweşiyê nêzî xwe dibînin, rûyê kafir û bêbaweran reş dibe. Melayîket ji wan re dibêjin: Ha ev e, ew ezabê ku we lez lê dikir!

(28) Bibêje: Eger Xwedê min û kesên ligel min bimirîne, yan jî li me were rehmê, ma sax bihêle, de ji min re bibêjin ma kî heye ku kafiran ji ezabê dijwar rizgar bike?

29 Bibêje: Ew Xwedayê rehman e (ew ê ku mirovan ji nexweşî û ezab rizgar dike). Me bawerî pê anî û me xwe bes sparte Wî. Vêca hûn ê di nêz de bizanin ka kî ye yê di rêşaşiyeke aşkera de.

30 Bibêje: Eger ava we di erdê de winda bibe û biçike, de ji min re bibêjin ma kî heye ku aveke herek ji we re bîne?

## SÛREYÊ QELEM

Sûreyê Qelem, pêncî û du (52) ayet e. Li Mekkê daketiye û sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva Qelem derbas bûye û bi mehneya pênûs û xame ye. Navekî din ê vî sûreyî jî Nûn e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

2 Nûn. Bi qelemê û bi ya ku rêzerêz tê nivîsîn sond be.

1 (Ya Muhemmed) bi sedema qenciya Xwedayê te (ku wehiy ji te re hinartiye), tu ne dîn î.

3 Bêguman perûyeke bêqutbûn ji bo te heye.

4 Bi rastî tu li ser rewiştekî (exlaqekî) mezin î.

5 Di nêzîk de (resûlê min) tu dê bibînî û ew jî dê bibînin…

6 Ka kî ji we dîn e.

7 Bi rastî Xwedayê te ew bêhtir dizane yê ku rê winda kiriye û ew bêhtir dizane bi yê ku rasterê bûye.

8 Nexwe bi gotina bêbawer û derewdêran meke!

9 Pûtperest dixwazin ku (bi devjêberdana hin hukimên Xwedê) tu nerm tev bigerî da ku ew jî li bara te nerm tev bigerin.

10 Bi gotina mirovê zêdesondxwer ê riswa, meke,

11 Ew ê devavêj ê eybderêx û ew ê sebkerê xeberguhêz.

فَلَمَّا رَأَوۡهُ زُلۡفَةٗ سِيٓـَٔتۡ وُجُوهُ ٱلَّذِينَ كَفَرُواْ وَقِيلَ هَٰذَا ٱلَّذِي
كُنتُم بِهِۦ تَدَّعُونَ ﴿٢٧﴾ قُلۡ أَرَءَيۡتُمۡ إِنۡ أَهۡلَكَنِيَ ٱللَّهُ وَمَن مَّعِيَ
أَوۡ رَحِمَنَا فَمَن يُجِيرُ ٱلۡكَٰفِرِينَ مِنۡ عَذَابٍ أَلِيمٖ ﴿٢٨﴾ قُلۡ هُوَ
ٱلرَّحۡمَٰنُ ءَامَنَّا بِهِۦ وَعَلَيۡهِ تَوَكَّلۡنَاۖ فَسَتَعۡلَمُونَ مَنۡ هُوَ فِي ضَلَٰلٖ مُّبِينٖ
﴿٢٩﴾ قُلۡ أَرَءَيۡتُمۡ إِنۡ أَصۡبَحَ مَآؤُكُمۡ غَوۡرٗا فَمَن يَأۡتِيكُم بِمَآءٖ مَّعِينِۭ ﴿٣٠﴾

ترتيبها ٦٨ — سُورَةُ القَلَمِ — آياتها ٥٢

بِسۡمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحۡمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

نٓۚ وَٱلۡقَلَمِ وَمَا يَسۡطُرُونَ ﴿١﴾ مَآ أَنتَ بِنِعۡمَةِ رَبِّكَ بِمَجۡنُونٖ ﴿٢﴾
وَإِنَّ لَكَ لَأَجۡرًا غَيۡرَ مَمۡنُونٖ ﴿٣﴾ وَإِنَّكَ لَعَلَىٰ خُلُقٍ عَظِيمٖ ﴿٤﴾
فَسَتُبۡصِرُ وَيُبۡصِرُونَ ﴿٥﴾ بِأَييِّكُمُ ٱلۡمَفۡتُونُ ﴿٦﴾ إِنَّ رَبَّكَ هُوَ
أَعۡلَمُ بِمَن ضَلَّ عَن سَبِيلِهِۦ وَهُوَ أَعۡلَمُ بِٱلۡمُهۡتَدِينَ ﴿٧﴾ فَلَا تُطِعِ
ٱلۡمُكَذِّبِينَ ﴿٨﴾ وَدُّواْ لَوۡ تُدۡهِنُ فَيُدۡهِنُونَ ﴿٩﴾ وَلَا تُطِعۡ كُلَّ
حَلَّافٖ مَّهِينٍ ﴿١٠﴾ هَمَّازٖ مَّشَّآءِۭ بِنَمِيمٖ ﴿١١﴾ مَّنَّاعٖ لِّلۡخَيۡرِ مُعۡتَدٍ
أَثِيمٍ ﴿١٢﴾ عُتُلِّۭ بَعۡدَ ذَٰلِكَ زَنِيمٍ ﴿١٣﴾ أَن كَانَ ذَا مَالٖ وَبَنِينَ
﴿١٤﴾ إِذَا تُتۡلَىٰ عَلَيۡهِ ءَايَٰتُنَا قَالَ أَسَٰطِيرُ ٱلۡأَوَّلِينَ ﴿١٥﴾

12 Ew ê çikûsê xêrnexwaz ê tehdeker û gunehkar…

13 Ew ê dilhişk û xeberreq, piştî wê jî ku ew bîjî be û bi xerabiyê navdêr be.

14 Ji ber ku xwedan mal û zarok bû (ji lew der barê Quranê de wisa bû)!

15 Dema ayetên me jê re dihatin xwendin, digot: Ew çîrok û çîvanokên berê ne!

16 Em ê li ser pozê her yekî ji wan durfekê deynin (da her kes wî nas bike).

17 Bi rastî me xelkê Mekkê jî mîna xwedanê baxçe ceribandin; dema sond xwarin ku sibehê zû (hê tu kesî nedîtî) fêkiyê xwe biqurêfin (da feqîran bêbehr bihêlin).

18 Ji bo feqîr û belengazan tu par veneqetandin. Bi wateyeke din, wisa li xwe bawer bûn negotin ku ‘Eger Xweda hez bike’!

سَنَسِمُهُۥ عَلَى ٱلْخُرْطُومِ ﴿١٦﴾ إِنَّا بَلَوْنَٰهُمْ كَمَا بَلَوْنَآ أَصْحَٰبَ ٱلْجَنَّةِ إِذْ أَقْسَمُوا۟
لَيَصْرِمُنَّهَا مُصْبِحِينَ ﴿١٧﴾ وَلَا يَسْتَثْنُونَ ﴿١٨﴾ فَطَافَ عَلَيْهَا طَآئِفٌ مِّن رَّبِّكَ
وَهُمْ نَآئِمُونَ ﴿١٩﴾ فَأَصْبَحَتْ كَٱلصَّرِيمِ ﴿٢٠﴾ فَتَنَادَوْا۟ مُصْبِحِينَ ﴿٢١﴾ أَنِ
ٱغْدُوا۟ عَلَىٰ حَرْثِكُمْ إِن كُنتُمْ صَٰرِمِينَ ﴿٢٢﴾ فَٱنطَلَقُوا۟ وَهُمْ يَتَخَٰفَتُونَ ﴿٢٣﴾
أَن لَّا يَدْخُلَنَّهَا ٱلْيَوْمَ عَلَيْكُم مِّسْكِينٌ ﴿٢٤﴾ وَغَدَوْا۟ عَلَىٰ حَرْدٍ قَٰدِرِينَ ﴿٢٥﴾ فَلَمَّا
رَأَوْهَا قَالُوٓا۟ إِنَّا لَضَآلُّونَ ﴿٢٦﴾ بَلْ نَحْنُ مَحْرُومُونَ ﴿٢٧﴾ قَالَ أَوْسَطُهُمْ أَلَمْ أَقُل
لَّكُمْ لَوْلَا تُسَبِّحُونَ ﴿٢٨﴾ قَالُوا۟ سُبْحَٰنَ رَبِّنَآ إِنَّا كُنَّا ظَٰلِمِينَ ﴿٢٩﴾ فَأَقْبَلَ
بَعْضُهُمْ عَلَىٰ بَعْضٍ يَتَلَٰوَمُونَ ﴿٣٠﴾ قَالُوا۟ يَٰوَيْلَنَآ إِنَّا كُنَّا طَٰغِينَ ﴿٣١﴾ عَسَىٰ
رَبُّنَآ أَن يُبْدِلَنَا خَيْرًا مِّنْهَآ إِنَّآ إِلَىٰ رَبِّنَا رَٰغِبُونَ ﴿٣٢﴾ كَذَٰلِكَ ٱلْعَذَابُ ۖ وَلَعَذَابُ
ٱلْءَاخِرَةِ أَكْبَرُ ۚ لَوْ كَانُوا۟ يَعْلَمُونَ ﴿٣٣﴾ إِنَّ لِلْمُتَّقِينَ عِندَ رَبِّهِمْ جَنَّٰتِ ٱلنَّعِيمِ
﴿٣٤﴾ أَفَنَجْعَلُ ٱلْمُسْلِمِينَ كَٱلْمُجْرِمِينَ ﴿٣٥﴾ مَا لَكُمْ كَيْفَ تَحْكُمُونَ ﴿٣٦﴾ أَمْ
لَكُمْ كِتَٰبٌ فِيهِ تَدْرُسُونَ ﴿٣٧﴾ إِنَّ لَكُمْ فِيهِ لَمَا تَخَيَّرُونَ ﴿٣٨﴾ أَمْ لَكُمْ أَيْمَٰنٌ
عَلَيْنَا بَٰلِغَةٌ إِلَىٰ يَوْمِ ٱلْقِيَٰمَةِ ۙ إِنَّ لَكُمْ لَمَا تَحْكُمُونَ ﴿٣٩﴾ سَلْهُمْ أَيُّهُم
بِذَٰلِكَ زَعِيمٌ ﴿٤٠﴾ أَمْ لَهُمْ شُرَكَآءُ فَلْيَأْتُوا۟ بِشُرَكَآئِهِمْ إِن كَانُوا۟ صَٰدِقِينَ ﴿٤١﴾
يَوْمَ يُكْشَفُ عَن سَاقٍ وَيُدْعَوْنَ إِلَى ٱلسُّجُودِ فَلَا يَسْتَطِيعُونَ ﴿٤٢﴾

(19) Vêca hê ew di xewê de, bi şev, belayeke mezin bi ser baxçeyê wan de hat.

(20) Êdî ew baxçe bû mîna rijiyê.

(21) Serê sibehê gazî hev kirin da ku herin nav baxçeyê xwe.

(22) (Gotin) de haydê sibehê zû herin eger (bi rastî) hûn dixwazin fêkiyên xwe biqurêfin!

(23) Ew, ber bi riya baxçe ve çûn, bi dizî (ji bo xizan dengê wan nebihîzin) ji hev re digotin:

(24) Bila ti feqîr û belengaz bi we nehisin û bi we re neyên nav baxçê we!

(25) Ew sibehê zû bi rê ketin û ji wan we ye ku ew dê bigihîjin armanca xwe.

(26) Lê belê gava wan baxçe (bi vê rewşê) dît, gotin: Me riya xwe şaş kiriye (ev ne baxçeyê me ye)!

(27) (Gava têgihîştin ku wan riya xwe şaş nekiriye û ew hatina cezakirin, wiha gotin:) Nexêr ne wekî me ye, belkî em hatin bêparkirin (lewra me jî feqîr û jar, bêpar dikirin)!

(28) Yê ji wan têgihîştir, got: Ma min ji we re negot bêmriya Xwedê mekin, de bila we Xwedayê xwe pak bidêra, we zekata malê xwe bidaye ku ev nehate serê we.

(29) (Piştî ev bi serê wan de hat û wan dît ku xeletî kirine) Gotin: Xwedêyo! Tu ji her kêmasiyê pak û paqij î. Bi rastî em her bi xwe sitemkar bûn.

(30) Paşê berê xwe dane hev, gazin ji hev kirin û sûc xistin stûyên hev.

(31) Gotin: Wax li rewşa me! Bi rastî em ji riya rast derketibûn.

(32) Hêvî heye ku Xwedayê me ji bedêla baxçeyê me yeke çêtir bide me. Bi rastî em hêvîdarê (qencî, kerem û lêborîna) Rebbê xwe ne.

(33) Ha wisa ye azabdayîna me. Belê ezabê axiretê gelek dijwartir û mezintir e, eger bizanin û têbigihîjin.

(34) Bêguman ji bo wan ên ku xwe ji bêheqiyê diparêzin li cem Xwedayê wan bihiştên xweş û bijiyar hene.

(35) Erê ma em ê (roja qiyametê) yên misliman mîna yên gunehkar lê bikin?

(36) Erê çi li we qewimiye? Ma hûn çawa bi wekheviyê hukim didin?

(37) Yan jî di dest we de kitêbek heye ku hûn (van îtîqadên pûç) di wê de dixwînin?

(38) Ku bi rastî jî ya hûn dixwazin ji bo we tê de ye?!

(39) Yan jî ma sozên we li ser me hene ku heta roja qiyametê ya hûn hukim pê bidin, dê her ji bo we be?!

(40) Ji wan bipirse: Ka kî ji wan kefîlê vê doza pûç e (ku ew û misliman dê wek hev bin)?

41 Yan jî di vê bîr û baweriyê de hevkarên wan hene, vêca bila gazî hevkarên xwe bikin, eger bi rastî ew rast dibêjin!

42 Wê roja ku li wan dibe tengasî û zehmetî (ku roja qiyametê ye), daxwaz li wan tê kirin ku herin sicûdê, lê belê ew nikarin biçin sicûdê (lewra ew di dinyayê de neçûne sicûdê).

43 Çavên wan bi tirs in, rezîl û riswan e. Bi rastî berê daxwaz ji wan dihate kirin ku biçin sicûdê (dîsa jî ew neçûn sicûdê), digel ku ew saxlem û rihet bûn jî.

44 Tu min û kesê ku bi vê Quranê bawerî nayînê ji hev re bihêle. Di nêzîk de, em ê jî hêdî hêdî wan ber bi dojehê ve bikêşim, bêyî ku ew bi xwe bihisin.

45 Ez muhletê didim wan. Bi rastî plana min a cezadanê pir dijwar e!

46 Yan jî tu heqekî ji wan dixwazî vêca ew li ser wan giran e (ji bo wê bawerî nayînin)?

47 Yan jî Lewhûl Mehfûz li cem wan e, vêca ew (wekî ku dilê wan divê wisa) dinivîsin?

48 Vêca tu ji bo hukmê Rebbê xwe, xwe ragire. Tu nebe wekî xwedanê masî (Yûnus Pêxember) wê dem bi derd û kul gazî Xwedayê xwe kir (da ku wî ji nava masî rizgar bike).

49 Eger dilovaniya Xwedayê wî pê re negihîştbûya ew ê li çola rip û rût bihata avêtin û dê lome lê bê kirin.

50 Belê Xwedayê wî ew bijart (wehî dayê û ber bi dilovaniya xwe xist), vêca ew ji mirovên qencîkar gerand.

51 Bi rastî, hindik mabû ku yên kafir wê dema li Quranê guhdarî dikin ji kerb û kîna xwe te çavînî bikin û te bixin erdê. Dibêjin: Bi rastî jî ew dîn e.

52 Hal ev e ku Quran bi xwe ji bo mirovan agahdarî ye (rêk, rêbaz û bername ye).

خَٰشِعَةً أَبْصَٰرُهُمْ تَرْهَقُهُمْ ذِلَّةٌ ۖ وَقَدْ كَانُوا۟ يُدْعَوْنَ إِلَى ٱلسُّجُودِ وَهُمْ سَٰلِمُونَ
﴿٤٣﴾ فَذَرْنِى وَمَن يُكَذِّبُ بِهَٰذَا ٱلْحَدِيثِ ۖ سَنَسْتَدْرِجُهُم مِّنْ حَيْثُ
لَا يَعْلَمُونَ ﴿٤٤﴾ وَأُمْلِى لَهُمْ ۚ إِنَّ كَيْدِى مَتِينٌ ﴿٤٥﴾ أَمْ تَسْـَٔلُهُمْ أَجْرًا فَهُم
مِّن مَّغْرَمٍ مُّثْقَلُونَ ﴿٤٦﴾ أَمْ عِندَهُمُ ٱلْغَيْبُ فَهُمْ يَكْتُبُونَ ﴿٤٧﴾ فَٱصْبِرْ
لِحُكْمِ رَبِّكَ وَلَا تَكُن كَصَاحِبِ ٱلْحُوتِ إِذْ نَادَىٰ وَهُوَ مَكْظُومٌ ﴿٤٨﴾ لَّوْلَآ
أَن تَدَٰرَكَهُۥ نِعْمَةٌ مِّن رَّبِّهِۦ لَنُبِذَ بِٱلْعَرَآءِ وَهُوَ مَذْمُومٌ ﴿٤٩﴾ فَٱجْتَبَٰهُ رَبُّهُۥ
فَجَعَلَهُۥ مِنَ ٱلصَّٰلِحِينَ ﴿٥٠﴾ وَإِن يَكَادُ ٱلَّذِينَ كَفَرُوا۟ لَيُزْلِقُونَكَ بِأَبْصَٰرِهِمْ
لَمَّا سَمِعُوا۟ ٱلذِّكْرَ وَيَقُولُونَ إِنَّهُۥ لَمَجْنُونٌ ﴿٥١﴾ وَمَا هُوَ إِلَّا ذِكْرٌ لِّلْعَٰلَمِينَ ﴿٥٢﴾

ترتيبها ٦٩ — سُورَةُ الحَاقَّة — آياتها ٥٢

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

ٱلْحَآقَّةُ ﴿١﴾ مَا ٱلْحَآقَّةُ ﴿٢﴾ وَمَآ أَدْرَىٰكَ مَا ٱلْحَآقَّةُ ﴿٣﴾ كَذَّبَتْ ثَمُودُ
وَعَادٌۢ بِٱلْقَارِعَةِ ﴿٤﴾ فَأَمَّا ثَمُودُ فَأُهْلِكُوا۟ بِٱلطَّاغِيَةِ ﴿٥﴾ وَأَمَّا
عَادٌ فَأُهْلِكُوا۟ بِرِيحٍ صَرْصَرٍ عَاتِيَةٍ ﴿٦﴾ سَخَّرَهَا عَلَيْهِمْ
سَبْعَ لَيَالٍ وَثَمَٰنِيَةَ أَيَّامٍ حُسُومًا فَتَرَى ٱلْقَوْمَ فِيهَا صَرْعَىٰ
كَأَنَّهُمْ أَعْجَازُ نَخْلٍ خَاوِيَةٍ ﴿٧﴾ فَهَلْ تَرَىٰ لَهُم مِّنۢ بَاقِيَةٍ ﴿٨﴾

# SÛREYÊ HAQQE

Sûreyê Haqqe pêncî û du (52) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva Haqqe hatiye û bi mehneya wê qiyametê ye ku wan heqîqetên hatine mandelkirin, dertîne rastê.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

1 El-Haqqe (ew Qiyameta ku heqq e, rast e û hemin dê bê).

2 Erê ma El-Haqqe çi ye?

3 Ma tu çi dizanî ku (heqîqet û binyata) El-Haqqe çi ye?

4 Semûd (gelê Salih Pêxember) û Ad (gelê Hûd Pêxember) bi roja qiyametê bawerî neanî.

5 Herçî Semûd e (û yên li pey wî) bi qîreke ji hedê der helak bûn.

6 Herçî Ad bû (û yên li pey wî) bi bahozeke bivîzevîz û zêde sar helak bûn.

7 Xwedê ew (bahoz) heft şev û heşt rojan li pey hev bi ser wan de şand. Ew di malên

وَجَآءَ فِرْعَوْنُ وَمَن قَبْلَهُۥ وَٱلْمُؤْتَفِكَٰتُ بِٱلْخَاطِئَةِ ﴿٩﴾ فَعَصَوْا۟ رَسُولَ
رَبِّهِمْ فَأَخَذَهُمْ أَخْذَةً رَّابِيَةً ﴿١٠﴾ إِنَّا لَمَّا طَغَا ٱلْمَآءُ حَمَلْنَٰكُمْ فِى ٱلْجَارِيَةِ
﴿١١﴾ لِنَجْعَلَهَا لَكُمْ تَذْكِرَةً وَتَعِيَهَآ أُذُنٌ وَٰعِيَةٌ ﴿١٢﴾ فَإِذَا نُفِخَ فِى ٱلصُّورِ
نَفْخَةٌ وَٰحِدَةٌ ﴿١٣﴾ وَحُمِلَتِ ٱلْأَرْضُ وَٱلْجِبَالُ فَدُكَّتَا دَكَّةً وَٰحِدَةً ﴿١٤﴾
فَيَوْمَئِذٍ وَقَعَتِ ٱلْوَاقِعَةُ ﴿١٥﴾ وَٱنشَقَّتِ ٱلسَّمَآءُ فَهِىَ يَوْمَئِذٍ وَاهِيَةٌ
﴿١٦﴾ وَٱلْمَلَكُ عَلَىٰٓ أَرْجَآئِهَا ۚ وَيَحْمِلُ عَرْشَ رَبِّكَ فَوْقَهُمْ يَوْمَئِذٍ ثَمَٰنِيَةٌ
﴿١٧﴾ يَوْمَئِذٍ تُعْرَضُونَ لَا تَخْفَىٰ مِنكُمْ خَافِيَةٌ ﴿١٨﴾ فَأَمَّا مَنْ أُوتِىَ
كِتَٰبَهُۥ بِيَمِينِهِۦ فَيَقُولُ هَآؤُمُ ٱقْرَءُوا۟ كِتَٰبِيَهْ ﴿١٩﴾ إِنِّى ظَنَنتُ أَنِّى مُلَٰقٍ
حِسَابِيَهْ ﴿٢٠﴾ فَهُوَ فِى عِيشَةٍ رَّاضِيَةٍ ﴿٢١﴾ فِى جَنَّةٍ عَالِيَةٍ ﴿٢٢﴾
قُطُوفُهَا دَانِيَةٌ ﴿٢٣﴾ كُلُوا۟ وَٱشْرَبُوا۟ هَنِيٓـًٔۢا بِمَآ أَسْلَفْتُمْ فِى ٱلْأَيَّامِ
ٱلْخَالِيَةِ ﴿٢٤﴾ وَأَمَّا مَنْ أُوتِىَ كِتَٰبَهُۥ بِشِمَالِهِۦ فَيَقُولُ يَٰلَيْتَنِى لَمْ أُوتَ كِتَٰبِيَهْ
﴿٢٥﴾ وَلَمْ أَدْرِ مَا حِسَابِيَهْ ﴿٢٦﴾ يَٰلَيْتَهَا كَانَتِ ٱلْقَاضِيَةَ ﴿٢٧﴾ مَآ أَغْنَىٰ
عَنِّى مَالِيَهْ ۜ ﴿٢٨﴾ هَلَكَ عَنِّى سُلْطَٰنِيَهْ ﴿٢٩﴾ خُذُوهُ فَغُلُّوهُ ﴿٣٠﴾ ثُمَّ ٱلْجَحِيمَ
صَلُّوهُ ﴿٣١﴾ ثُمَّ فِى سِلْسِلَةٍ ذَرْعُهَا سَبْعُونَ ذِرَاعًا فَٱسْلُكُوهُ ﴿٣٢﴾ إِنَّهُۥ
كَانَ لَا يُؤْمِنُ بِٱللَّهِ ٱلْعَظِيمِ ﴿٣٣﴾ وَلَا يَحُضُّ عَلَىٰ طَعَامِ ٱلْمِسْكِينِ ﴿٣٤﴾

xwe de mirî û bêbizav man, her wekî ew qurmê darxurmayên rizî ne.

(8) Vêca ma tu şûnmayîneke ji wan dibînî?

(9) Firewn û yên beriya wî û xelkê wan welatên ku hatine serûbinkirin jî, dest bi gunehan kir.

(10) Her wiha wan guhdariya pêxemberê xwe nekir, vêca Xwedê bi ezabekî tund/dijwar ew ceza kirin.

(11) Bi rastî gava avê (her alî) da ber xwe û bilind bû, Me hûn di keştiyan de hilgirtin…

(12) Da ku em vê yekê ji we re bikin pend û şîret û da ku guhên têgihîştî têbigihîjin.

(13) Êdî gava ku di sûrê de yek pifkirinek bê pifkirin…

(14) Erd û çiya bên rakirin û bi carekê li hev bên xistin û hûr û hêra bibin.

(15) Ha wê rojê bizane ku qiyamet rabû.

(16) Asîman diderize û êdî wê rojê asîman sist û xav e.

(17) Melayîket li dora asmên in. Wê rojê heşt melayîket Erşê Xwedayê te di ser van (mirovan re) dê hilgirin.

(18) Wê rojê (ji bo hesab) hûn ê bêne pêşberî Xwedayê xwe, kes ji we nayê veşartin.

(19) Herçî yê ku deftera emelê xwe bi destê xwe yê rastê wergire, (bikêf) dibêje: Kerem bikin; deftera min bixwînin.

(20) Bi rastî min ji dil zanîbû ku hesabê roja qiyametê li pêşiya min e.

(21) Vêca ew di jiyaneke xweş de ye.

(22) Di bihişteke qedirbilind û xwedanrûmet de ye.

(23) Fêkiyê wê nêzik û berdest e.

(24) (Melayîket ji wan re dibêjin:) Bi sebûnet kar û kiryarên we di dinyayê de kirin bixwin, vexwin, ji we re noşîcan be.

(25) Herçî yê ku deftera emelê xwe, bi destê xwe yê çepê wergire, dê (bihesret) bibêje: Xwezî ev defter ji bo min nehatibûya dayîn!

(26) De bila min nizanibûya ka hesabê min çi ye!

(27) Xwezî bi mirinê re her tişt bi dawî bûya (û dîsa piştî mirinê ez sax nebûma)!

(28) Mal û milkê min hîç feyde negihande min (û ezab jî ji min neda paş)…

(29) Desthilatiya min (hêz û piştevanî, nav û dengê min) ji min hate standin.

(30) (Ji zebaniyan re dê bê gotin:) Wî bigirin û bi zincîran (destên wî bi stûyê wî ve) girê bidin…

(31) Paşê wî biavêjin nav agirê bipêt!

(32) Piştre wî bi zincîreke heftê gaz zincîrpêç bikin.

(33) Bi rastî wî bawerî bi Xwedayê Mezin nedianî…

(34) Ne xwe ne jî kesê din ji bo nandayîn û têrkirina belengazan teşwîq nedikir.

فَلَيْسَ لَهُ ٱلْيَوْمَ هَٰهُنَا حَمِيمٌ ﴿٣٥﴾ وَلَا طَعَامٌ إِلَّا مِنْ غِسْلِينٍ ﴿٣٦﴾ لَّا يَأْكُلُهُۥٓ
إِلَّا ٱلْخَٰطِـُٔونَ ﴿٣٧﴾ فَلَآ أُقْسِمُ بِمَا تُبْصِرُونَ ﴿٣٨﴾ وَمَا لَا تُبْصِرُونَ ﴿٣٩﴾
إِنَّهُۥ لَقَوْلُ رَسُولٍ كَرِيمٍ ﴿٤٠﴾ وَمَا هُوَ بِقَوْلِ شَاعِرٍ ۚ قَلِيلًا مَّا تُؤْمِنُونَ ﴿٤١﴾
وَلَا بِقَوْلِ كَاهِنٍ ۚ قَلِيلًا مَّا تَذَكَّرُونَ ﴿٤٢﴾ تَنزِيلٌ مِّن رَّبِّ ٱلْعَٰلَمِينَ ﴿٤٣﴾ وَلَوْ
تَقَوَّلَ عَلَيْنَا بَعْضَ ٱلْأَقَاوِيلِ ﴿٤٤﴾ لَأَخَذْنَا مِنْهُ بِٱلْيَمِينِ ﴿٤٥﴾ ثُمَّ لَقَطَعْنَا
مِنْهُ ٱلْوَتِينَ ﴿٤٦﴾ فَمَا مِنكُم مِّنْ أَحَدٍ عَنْهُ حَٰجِزِينَ ﴿٤٧﴾ وَإِنَّهُۥ لَتَذْكِرَةٌ
لِّلْمُتَّقِينَ ﴿٤٨﴾ وَإِنَّا لَنَعْلَمُ أَنَّ مِنكُم مُّكَذِّبِينَ ﴿٤٩﴾ وَإِنَّهُۥ لَحَسْرَةٌ عَلَى
ٱلْكَٰفِرِينَ ﴿٥٠﴾ وَإِنَّهُۥ لَحَقُّ ٱلْيَقِينِ ﴿٥١﴾ فَسَبِّحْ بِٱسْمِ رَبِّكَ ٱلْعَظِيمِ ﴿٥٢﴾

## سُورَةُ ٱلْمَعَارِجِ

ترتيبها ٧٠ — آياتها ٤٤

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

سَأَلَ سَآئِلٌۢ بِعَذَابٍ وَاقِعٍ ﴿١﴾ لِّلْكَٰفِرِينَ لَيْسَ لَهُۥ دَافِعٌ ﴿٢﴾ مِّنَ
ٱللَّهِ ذِى ٱلْمَعَارِجِ ﴿٣﴾ تَعْرُجُ ٱلْمَلَٰٓئِكَةُ وَٱلرُّوحُ إِلَيْهِ فِى
يَوْمٍ كَانَ مِقْدَارُهُۥ خَمْسِينَ أَلْفَ سَنَةٍ ﴿٤﴾ فَٱصْبِرْ صَبْرًا جَمِيلًا ﴿٥﴾
إِنَّهُمْ يَرَوْنَهُۥ بَعِيدًا ﴿٦﴾ وَنَرَىٰهُ قَرِيبًا ﴿٧﴾ يَوْمَ تَكُونُ ٱلسَّمَآءُ كَٱلْمُهْلِ
﴿٨﴾ وَتَكُونُ ٱلْجِبَالُ كَٱلْعِهْنِ ﴿٩﴾ وَلَا يَسْـَٔلُ حَمِيمٌ حَمِيمًا ﴿١٠﴾

35 Îro li vir, jê re tu heval û hogir nîn in (ku feydê bidinê).
36 Ji bilî xwîn û edabê tu xwarin jî tun e.
37 Ji gunehkaran pê ve kes vê xwarinê naxwe.
38 Sond be, bi tiştên ku hûn dibinin…
39 Bi tiştên ku hûn nabînin jî…
40 Bêguman ev Quran, gotina qasidekî pir birûmet e (ku ji cem Xwedayê dilovan e).
41 Ev Quran, ne gotina şairekî ye, hûn çiqas kêm bawer dikin!
42 Ev Quran, ne gotina remildarekî ye jî, hûn çiqas hindikî difikirin (û îbret nagirin)!
43 Ev Quran, ji cem Perwerdegarê alemê ve hatiye şandin.
44 Eger wî pêxemberî li ser (navê) me hin gotin lê bianîna..
45 Teqez em ê wî bi xurtî bihingêvin..
46 Piştre em ê dilreha wî (ya jiyanê) biqetînin.
47 Ji we tu kesî dê nikariya ji bo wî berevaniyê bikira (da wî ji cezayê rizgar bike).
48 Bi rastî Quran ji bo teqwadaran bîranîn û şîret e.
49 Em, teqez dizanin ku ji we hin kes bi Quranê bawerî nayînin.
50 Teqez ev Quran ji bo kafiran hesret û poşmanî ye.
51 Bi rastî jî Quran, rastiyeke rast e (tu guman tê de nîn e).
52 Nexwe, navê Rebbê xwe yê mezin pak û paqij bidêre.

## SÛREYÊ ME'ARIC

Sûreyê Me'aric çil û çar (44) ayet e. Li Mekkê daketiye û navê xwe ji ayeta 3'em girtiye ku peyva Me'aric tê de derbas bûye û bi mehneya bilindbûn û hilbûna bi ber bi asîmanan ve ye.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

1 Pirsyarekî ew ezabê ku teqez dê bi ser wan de were, daxwaz kir (got: de ka bila qiyamet bê, vêca em jî bêne ezabdan).
2 Wê rojê yekî ku ezab ji ser wan bide alî tune ye.
3 Ew ezab ji cem wî Xwedayê ku xwediyê sêliman e, (ew ên ku melayîket pê ve diçin asimanan).
4 Melayîket û Cibreîl di rojekê de bi bal Xwedê ve hildikişin ku dûrahiya wê qonaxa pêncî hezar sal e (bi salên dinyayê).
5 Vêca tu li ser azara wan sebrê bikêşe, sebreke cemîl (bêtirs û xem).
6 Bi rastî kafir ezabê wê rojê dûr dibînin.
7 Em jî wî nêzîk dibînin.
8 Ew roj asîman dibe wekî madena (kanzaya) heliyayî.
9 Çiya jî dê dibin mîna hiriya jendî.
10 Dost li halê dost napirse (lewra her kes bi xwe lebikiye).

يُبَصَّرُونَهُمْ ۚ يَوَدُّ ٱلْمُجْرِمُ لَوْ يَفْتَدِى مِنْ عَذَابِ يَوْمِئِذٍۭ بِبَنِيهِ ﴿١١﴾
وَصَٰحِبَتِهِۦ وَأَخِيهِ ﴿١٢﴾ وَفَصِيلَتِهِ ٱلَّتِى تُـْٔوِيهِ ﴿١٣﴾ وَمَن فِى ٱلْأَرْضِ
جَمِيعًا ثُمَّ يُنجِيهِ ﴿١٤﴾ كَلَّآ ۖ إِنَّهَا لَظَىٰ ﴿١٥﴾ نَزَّاعَةً لِّلشَّوَىٰ ﴿١٦﴾ تَدْعُوا۟
مَنْ أَدْبَرَ وَتَوَلَّىٰ ﴿١٧﴾ وَجَمَعَ فَأَوْعَىٰ ﴿١٨﴾ ۞ إِنَّ ٱلْإِنسَٰنَ خُلِقَ هَلُوعًا
﴿١٩﴾ إِذَا مَسَّهُ ٱلشَّرُّ جَزُوعًا ﴿٢٠﴾ وَإِذَا مَسَّهُ ٱلْخَيْرُ مَنُوعًا ﴿٢١﴾ إِلَّا
ٱلْمُصَلِّينَ ﴿٢٢﴾ ٱلَّذِينَ هُمْ عَلَىٰ صَلَاتِهِمْ دَآئِمُونَ ﴿٢٣﴾ وَٱلَّذِينَ فِىٓ
أَمْوَٰلِهِمْ حَقٌّ مَّعْلُومٌ ﴿٢٤﴾ لِّلسَّآئِلِ وَٱلْمَحْرُومِ ﴿٢٥﴾ وَٱلَّذِينَ يُصَدِّقُونَ
بِيَوْمِ ٱلدِّينِ ﴿٢٦﴾ وَٱلَّذِينَ هُم مِّنْ عَذَابِ رَبِّهِم مُّشْفِقُونَ ﴿٢٧﴾ إِنَّ عَذَابَ
رَبِّهِمْ غَيْرُ مَأْمُونٍ ﴿٢٨﴾ وَٱلَّذِينَ هُمْ لِفُرُوجِهِمْ حَٰفِظُونَ ﴿٢٩﴾ إِلَّا عَلَىٰٓ
أَزْوَٰجِهِمْ أَوْ مَا مَلَكَتْ أَيْمَٰنُهُمْ فَإِنَّهُمْ غَيْرُ مَلُومِينَ ﴿٣٠﴾ فَمَنِ ٱبْتَغَىٰ وَرَآءَ
ذَٰلِكَ فَأُو۟لَٰٓئِكَ هُمُ ٱلْعَادُونَ ﴿٣١﴾ وَٱلَّذِينَ هُمْ لِأَمَٰنَٰتِهِمْ وَعَهْدِهِمْ رَٰعُونَ
﴿٣٢﴾ وَٱلَّذِينَ هُم بِشَهَٰدَٰتِهِمْ قَآئِمُونَ ﴿٣٣﴾ وَٱلَّذِينَ هُمْ عَلَىٰ صَلَاتِهِمْ يُحَافِظُونَ
﴿٣٤﴾ أُو۟لَٰٓئِكَ فِى جَنَّٰتٍ مُّكْرَمُونَ ﴿٣٥﴾ فَمَالِ ٱلَّذِينَ كَفَرُوا۟ قِبَلَكَ مُهْطِعِينَ
﴿٣٦﴾ عَنِ ٱلْيَمِينِ وَعَنِ ٱلشِّمَالِ عِزِينَ ﴿٣٧﴾ أَيَطْمَعُ كُلُّ ٱمْرِئٍ مِّنْهُمْ
أَن يُدْخَلَ جَنَّةَ نَعِيمٍ ﴿٣٨﴾ كَلَّآ ۖ إِنَّا خَلَقْنَٰهُم مِّمَّا يَعْلَمُونَ ﴿٣٩﴾

(11) Ew dê nîşanî hev bêne dayîn (û hev nas jî dikin lê belê bi hev re xeber nadin, çimkî her kes bi xwe lebikiye). Kesê gunehkar ji ber ezabê roja qiyametê dixwaze ku zarokên xwe…
(12) Jina xwe û birayê xwe….
(13) Eşîr û malbata ku wî himbêz dikir…
(14) Çiqas kesên ku li ser erdê hene jî tevekan gorî xwe bike, da ku paşê ew rizgar bibe.
(15) Na, ev ne wisan e! Bi rastî dojeh agirekî bipêt e.
(16) Ew çermê seriyan radike.
(17) Ew (dojeh) gazî kesê ku pişta xwe daye (îmanê) û berê xwe jê daye paş, dike.
(18) Gazî yên ku (serwetê) dide ser hev (û zekatê jê nade) dike!
(19) Bi rastî însan lezgîn û çikûs hatiye afirandin…
(20) Dema nebaşî (nexweşî, feqîrî û ê mina van) bi ser de tê (xemgîn dibe û) dike feryad…
(21) Gava ku qenciyek bi ser de bê (vêca bibe xwedîmal û mewdan) destgirtî û çikûs dibe.
(22) Ji bilî yên nimêjker…
(23) Ew ên ku nimêja xwe berdewamî dikin (û lê miqate ne).
(24) Ew (nimêjker)ên ku di malên wan de pareke diyarkirî (zekat û sedeqe) heye…
(25) Ji bo parsek û bêparan (ew ên ku ji fihêtiya xwe naxwazin).
(26) Ew ên ku bi roja cezadanê (xelat û celatê) bawerî tînin…
(27) Ew ên ku ji ezabê Xwedayê xwe bitirs in.
(28) Bi rastî ezabê Rebbê wan bêewle ye…
(29) Ew ên ku dawpaqij in û namûsa xwe diparêzin.
(30) Lê belê ne li hember jin û cariyeyên xwe. Bi rastî der barê wan de ew bêgazinde ne.
(31) Êdî kesê ku ji bilî van (jin û cariyên ku helalên wî ne) bixwaze ku bi hinekên din re (bênîkah) raze, vêca ha ew sînorbihêr her bi xwe ne.
(32) Ew ên ku spare û peymanên xwe bi cih tînin…
(33) Ew ên ku şahdeyiya xwe (bi rast û duristî) didin…
(34) Ew ên ku li nimêja xwe miqate ne (û di çaxê wê de dikin)…
(35) Ha ev in, ên ku di bihiştan de rûmeta wan tê girtin.
(36) Vêca ma çi li yên kafir qewimiye ku ji te direvîn û bawerî bi te nayînin?!
(37) Li rast û çepê te, ji hevbelavbûyî qefle qefle ne.
(38) Ma her yek ji wan li hêviya ku ew biçe Ceneta **Neîmê** (ya têr bixêr û bêr)?
(39) Na (bila vê hêviyê nekin)! Bi rastî ew jî dizanin ku me ew ji çi afirandine (lê belê wan îbret negirtiye û nehatine îmanê).

فَلَآ أُقۡسِمُ بِرَبِّ ٱلۡمَشَٰرِقِ وَٱلۡمَغَٰرِبِ إِنَّا لَقَٰدِرُونَ ﴿٤٠﴾ عَلَىٰٓ أَن نُّبَدِّلَ خَيۡرًا مِّنۡهُمۡ
وَمَا نَحۡنُ بِمَسۡبُوقِينَ ﴿٤١﴾ فَذَرۡهُمۡ يَخُوضُواْ وَيَلۡعَبُواْ حَتَّىٰ يُلَٰقُواْ يَوۡمَهُمُ ٱلَّذِي
يُوعَدُونَ ﴿٤٢﴾ يَوۡمَ يَخۡرُجُونَ مِنَ ٱلۡأَجۡدَاثِ سِرَاعًا كَأَنَّهُمۡ إِلَىٰ نُصُبٍ يُوفِضُونَ
﴿٤٣﴾ خَٰشِعَةً أَبۡصَٰرُهُمۡ تَرۡهَقُهُمۡ ذِلَّةٞۚ ذَٰلِكَ ٱلۡيَوۡمُ ٱلَّذِي كَانُواْ يُوعَدُونَ ﴿٤٤﴾

## سُورَةُ نُوحٍ

ترتيبها ٧١ — آياتها ٢٨

بِسۡمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحۡمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

إِنَّآ أَرۡسَلۡنَا نُوحًا إِلَىٰ قَوۡمِهِۦٓ أَنۡ أَنذِرۡ قَوۡمَكَ مِن قَبۡلِ أَن يَأۡتِيَهُمۡ
عَذَابٌ أَلِيمٞ ﴿١﴾ قَالَ يَٰقَوۡمِ إِنِّي لَكُمۡ نَذِيرٞ مُّبِينٌ ﴿٢﴾ أَنِ ٱعۡبُدُواْ
ٱللَّهَ وَٱتَّقُوهُ وَأَطِيعُونِ ﴿٣﴾ يَغۡفِرۡ لَكُم مِّن ذُنُوبِكُمۡ وَيُؤَخِّرۡكُمۡ
إِلَىٰٓ أَجَلٖ مُّسَمًّىۚ إِنَّ أَجَلَ ٱللَّهِ إِذَا جَآءَ لَا يُؤَخَّرُۚ لَوۡ كُنتُمۡ تَعۡلَمُونَ
﴿٤﴾ قَالَ رَبِّ إِنِّي دَعَوۡتُ قَوۡمِي لَيۡلٗا وَنَهَارٗا ﴿٥﴾ فَلَمۡ يَزِدۡهُمۡ دُعَآءِيٓ إِلَّا
فِرَارٗا ﴿٦﴾ وَإِنِّي كُلَّمَا دَعَوۡتُهُمۡ لِتَغۡفِرَ لَهُمۡ جَعَلُوٓاْ أَصَٰبِعَهُمۡ
فِيٓ ءَاذَانِهِمۡ وَٱسۡتَغۡشَوۡاْ ثِيَابَهُمۡ وَأَصَرُّواْ وَٱسۡتَكۡبَرُواْ ٱسۡتِكۡبَارٗا
﴿٧﴾ ثُمَّ إِنِّي دَعَوۡتُهُمۡ جِهَارٗا ﴿٨﴾ ثُمَّ إِنِّيٓ أَعۡلَنتُ لَهُمۡ وَأَسۡرَرۡتُ
لَهُمۡ إِسۡرَارٗا ﴿٩﴾ فَقُلۡتُ ٱسۡتَغۡفِرُواْ رَبَّكُمۡ إِنَّهُۥ كَانَ غَفَّارٗا ﴿١٠﴾

(40) Na (rastî ne wekî hêviya wan e)! Sond bi Xwedayê rojhilat û rojavayan, bi rastî jî em kara ne…

(41) Li ser a ku hinekan ji wan çêtir bînin şûna wan û tu kes dê zora me jî nebe.

(42) Vêca ji wan bigere, bila xwe (di pûçiyê de) berdin û bi dinyaya xwe ve bimînin heta wê rojê bibînin a ku peymana (ezabê) wê ji wan re hatiye dayîn.

(43) Roja ku bi lez ji goristanan derdikevin û ber bi cihê kombûnê ve diçin, tu dibêjî qey qesta pûtê xwe dikin, ew ê bi destê xwe çêkirin.

(44) Wê rojê ser û çavên wan bitirs û riswa ne. Ha ev e, ew roja ku li dinyayê pê dihatin tirsandin.

# SÛREYÊ NÛH

Sûreyê Nûh bîst û heşt (28) ayet e û li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de navê Nûh Pêxember (es) derbas bûye.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

(1) Bêguman Me Nûh (bi pêxemberî) ji gelê wî re şand û (me jê re got:) Beriya ezabekî cansoj bi ser wan de bê tu gelê xwe hişyar bike û wan bitirsîne.

(2) Nûh got: Gelî miletê min! Bi rastî ez ji we re hişyarkerekî aşkera me.

(3) Ku hûn îbadetê Xwedê bikin û hay ji ferman û qedexeyên Wî hebin û bi gotina min bikin.

(4) (Hingê) dê Xwedê li gunehên we bibore û heta demeke navlêkirî dê jiyana we bide paş. Bi rastî dema ew wextê navlêkirî (dema mirinê) hat, ew nayê bipaşdexistin. Eger we (poşmaniya li cem mirinê û hetîketiya ku bê serê we) bizaniya (we yê bi bal îman û taetê ve lez bikira)!

(5) Nûh pêxember got: Xwedayê min! Bi rastî min, bi şev û roj gelê xwe her vexwend bal îmanê.

(6) Vêca banga min tenê ew ji min dûr kirin.

(7) Bi rastî ji bo ku tu li gunehên wan biborî, çiqas min gazî li wan kir, wan her tiliyên xwe xistine guhê xwe, cilên xwe li ser û çavên xwe werdan, (wan li ser kufrê) rikdarî kir û wan bi quretî û pozbilindî xwe mezin dêra.

(8) Paşê min bi aşkera (û bêtirs) gazî li wan kir.

(9) Piştre, dîsa jî min bi aşkera, bi dizî gazî wan kir (yanî min her rêbaz û her şêwaz bi kar anî).

(10) Min ji wan re got: Ji Rebbê xwe lêborînê bixwazin, bi rastî Ew pir efûkar e.

يُرْسِلِ السَّمَاءَ عَلَيْكُمْ مِدْرَارًا ﴿١١﴾ وَيُمْدِدْكُمْ بِأَمْوَالٍ وَبَنِينَ وَيَجْعَلْ
لَكُمْ جَنَّاتٍ وَيَجْعَلْ لَكُمْ أَنْهَارًا ﴿١٢﴾ مَا لَكُمْ لَا تَرْجُونَ لِلَّهِ وَقَارًا ﴿١٣﴾
وَقَدْ خَلَقَكُمْ أَطْوَارًا ﴿١٤﴾ أَلَمْ تَرَوْا كَيْفَ خَلَقَ اللَّهُ سَبْعَ سَمَاوَاتٍ
طِبَاقًا ﴿١٥﴾ وَجَعَلَ الْقَمَرَ فِيهِنَّ نُورًا وَجَعَلَ الشَّمْسَ سِرَاجًا ﴿١٦﴾
وَاللَّهُ أَنْبَتَكُمْ مِنَ الْأَرْضِ نَبَاتًا ﴿١٧﴾ ثُمَّ يُعِيدُكُمْ فِيهَا وَيُخْرِجُكُمْ
إِخْرَاجًا ﴿١٨﴾ وَاللَّهُ جَعَلَ لَكُمُ الْأَرْضَ بِسَاطًا ﴿١٩﴾ لِتَسْلُكُوا مِنْهَا
سُبُلًا فِجَاجًا ﴿٢٠﴾ قَالَ نُوحٌ رَبِّ إِنَّهُمْ عَصَوْنِي وَاتَّبَعُوا مَنْ لَمْ يَزِدْهُ
مَالُهُ وَوَلَدُهُ إِلَّا خَسَارًا ﴿٢١﴾ وَمَكَرُوا مَكْرًا كُبَّارًا ﴿٢٢﴾ وَقَالُوا
لَا تَذَرُنَّ آلِهَتَكُمْ وَلَا تَذَرُنَّ وَدًّا وَلَا سُوَاعًا وَلَا يَغُوثَ وَيَعُوقَ
وَنَسْرًا ﴿٢٣﴾ وَقَدْ أَضَلُّوا كَثِيرًا وَلَا تَزِدِ الظَّالِمِينَ إِلَّا ضَلَالًا ﴿٢٤﴾
مِمَّا خَطِيئَاتِهِمْ أُغْرِقُوا فَأُدْخِلُوا نَارًا فَلَمْ يَجِدُوا لَهُمْ مِنْ دُونِ
اللَّهِ أَنْصَارًا ﴿٢٥﴾ وَقَالَ نُوحٌ رَبِّ لَا تَذَرْ عَلَى الْأَرْضِ مِنَ الْكَافِرِينَ
دَيَّارًا ﴿٢٦﴾ إِنَّكَ إِنْ تَذَرْهُمْ يُضِلُّوا عِبَادَكَ وَلَا يَلِدُوا إِلَّا فَاجِرًا
كَفَّارًا ﴿٢٧﴾ رَبِّ اغْفِرْ لِي وَلِوَالِدَيَّ وَلِمَنْ دَخَلَ بَيْتِيَ
مُؤْمِنًا وَلِلْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ وَلَا تَزِدِ الظَّالِمِينَ إِلَّا تَبَارًا ﴿٢٨﴾

(11) (Efûya xwe bixwazin) dê Xwedê ji ewran ji bo we baranê li dû hev bibarîne.

(12) Mal û zarokên we pir bike, baxçan bide we û ji we re çeman biherikîne.

(13) Çi li we qewimiye ku hûn qedrê mezinahiya Xwedê nagirin û bi duristî jê natirsin)?

(14) Hal ev e ku Xwedê hûn qonax bi qonax (pêşî dilopek av, piştre xwîn û paşê parçeyek goşt û her wisa..) afirandine.

(15) Ma hûn desthilatiya Xwedê nabînin ku çawa heft tebeq asîman (di ser hev re bi rewşekî ahengsaz) afirandine?

(16) Xwedê çawa heyv di wan de kiriye rewşen (û nûr) û roj jî kiriye çirayeke ronîker.

(17) Xwedayê mezin hûn (bavê we Adem) ji axê afirand (û di erdê de hûn bi dûv xistin).

(18) Careke din (dema hûn mirin) dê we vegerînê û dîsa (ji bo mehşerê) dê we jê derîne.

(19) Ellah Teala erd ji we re raxistiye…

(20) Da hûn karibin di erdê de riyên fireh bigirin (û li risqê xwe bigerin).

(21) Nûh got: Xwedayê min! Bi rastî wan guhdariya min nekir û dan pey maldarên xwe, ew ên ku mal û zarokên wan ji bili zerarê tu feyde li wan nekiriye.

(22) Wan hîle û planên mezin girê dan.

(23) Gotin: Zinhar îlahên xwe (ew pûtên ku ji xwe re kiribûn îlah) terk mekin û dev ji **wedd, suwa, yexûs, yeûq** û **nesr** jî bermedin!

(24) Bi rastî wan (pûtan an jî wan serokên sitemkar) pir kes ji rê deranîn. (Xwedayê min!) Tu jî rêşaşiya wan sitemkaran her zêde bike!

(25) Ew ji ber gunehên xwe di tofanê de xeniqîn, vêca paşê ew ketin êgir, êdî li hemberî Xwedê ji bo xwe tu arîkar jî nedîtin (ku wan ji ezabê Wî biparêzin).

(26) Nûh got: Xwedayê min! Li ser erdê ji kafiran tu kesî mehêle!

(27) Bi rastî eger tu wan bihêlî dê evdên te ji rê derînin û dê tenê mirovên nankor û neqenc biwelidînin (û perwerde bikin).

(28) Xwedayê min! Li min û dê û bavên min û ji bawermendan kesê bikeve xaniyê min û li mêrên bawermend û jinên bawermend bibore û tenê helaka zaliman zêde bike.

# SÛREYÊ CIN

Sûreyê Cin bîst û heşt (28) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva Cin derbas bûye û bi mehneya "yên pir veşartî" ye. Sûre behsa wan cinan dike ku hatine li Quranê guhdarî kirine û wan îman pê aniye. Her wiha hedan û sebra Pêxember (sew) aniye ku cin jî bûne tabi'ên wî.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

1 (Ya Muhemmed!) Bibêje: Ji bo min wehî hat ku civatek ji cinan li Quranê guhdarî kir. Vêca (piştî ku li qewmê xwe vegeriyan) gotin: Bi rastî me li Quraneke rind û balkêş (ku mîna wê ne hatiye dîtin û nehatiye bihîstin) guhdarî kir.

2 Bi bal riya rast ve rasterê dike. Vêca me bawerî pê anî (ku ew kitêba Xwedê ye) û em tu kesî ji Xwedayê xwe re nakin hevpişk û heval.

3 Bêguman şanê Xwedê bilind û mezin e û ji bo xwe tu heval û zarok negirtine.

4 Bi rastî rewş ev e, bêhişên me (îblîs an jî cinên har) der barê Xwedê de derewên bêbinyad lêanîn.

5 Bi rastî jî me hizir dikir ku tu îns û cin der barê Xwedê qet bi derew nabêjin.

6 Bi rastî hinek ji însanan hebûn ku ji cinan parastin dixwestin. Vêca cinan ew zêdetir ji rê derdixistin û bi ser de dibirin.

7 Bi rastî cinan jî wekî ku we (mirovan) hizir dikir ku Xwedê dê (piştî mirinê) tu kesî sax neke (û neşîne ber hesab).

8 Bi rastî me da xwe ku em herin asîmanan (da ku li melayîketan guhdarî bikin). Lê belê me dît ku asîman (ji melayîketan) tije zêrevanên dijwar û tije stêrên wek bizot bûye.

9 Hal ev e, (berî şandina Pêxember) ji bo me, li asîmanan cihê guhdariyê hebû. Lê belê vêga kî bixwaze guhdariyê bike dê bibînê ji stêran pêta agir li berê sekiniye.

10 Bi rastî em (cin) nizanin ka (ev rweş) ji bo çi ye; Xwedê divê xelkê erdê pê biêşînê yan jî Xwedê pê xêra wan xwestiye?

11 Bi rastî hin ji me hene ku salih in (rewşa wan baş e kar û kiryarên baş dikin) û hin ji me hene ku ne wisan in, em xwedanê gelek rêk û rêbaz in.

12 (Êdî) me yeqîn fehm kir ku Xwedê li erdê li ser me desthilatdar e û em nikarin ji ber ezabê wî birevin.

13 Bi rastî gava me li Quranê guhdarî kir, me yekser bawerî pê anî. Vêca kî bawerî bi Rebbê xwe bîne bila netirs e; êdî ne xêrên wî kêm dibin ne jî gunehên wî zêde dibin.

ترتيبها ٧٢ — سورة الجن — آياتها ٢٨

بسم الله الرحمن الرحيم

قل أوحي إلي أنه استمع نفر من الجن فقالوا إنا سمعنا قرءانا
عجبا ﴿١﴾ يهدي إلى الرشد فءامنا به ولن نشرك بربنا أحدا ﴿٢﴾
وأنه تعالى جد ربنا ما اتخذ صاحبة ولا ولدا ﴿٣﴾ وأنه كان
يقول سفيهنا على الله شططا ﴿٤﴾ وأنا ظننا أن لن تقول الإنس
والجن على الله كذبا ﴿٥﴾ وأنه كان رجال من الإنس يعوذون برجال
من الجن فزادوهم رهقا ﴿٦﴾ وأنهم ظنوا كما ظننتم أن لن يبعث
الله أحدا ﴿٧﴾ وأنا لمسنا السماء فوجدناها ملئت حرسا
شديدا وشهبا ﴿٨﴾ وأنا كنا نقعد منها مقاعد للسمع فمن
يستمع الآن يجد له شهابا رصدا ﴿٩﴾ وأنا لا ندري أشر أريد
بمن في الأرض أم أراد بهم ربهم رشدا ﴿١٠﴾ وأنا منا الصالحون
ومنا دون ذلك كنا طرائق قددا ﴿١١﴾ وأنا ظننا أن لن نعجز
الله في الأرض ولن نعجزه هربا ﴿١٢﴾ وأنا لما سمعنا الهدى
ءامنا به فمن يؤمن بربه فلا يخاف بخسا ولا رهقا ﴿١٣﴾

وَأَنَّا مِنَّا ٱلْمُسْلِمُونَ وَمِنَّا ٱلْقَٰسِطُونَ ۖ فَمَنْ أَسْلَمَ فَأُو۟لَٰٓئِكَ
تَحَرَّوْا۟ رَشَدًا ﴿١٤﴾ وَأَمَّا ٱلْقَٰسِطُونَ فَكَانُوا۟ لِجَهَنَّمَ حَطَبًا ﴿١٥﴾
وَأَلَّوِ ٱسْتَقَٰمُوا۟ عَلَى ٱلطَّرِيقَةِ لَأَسْقَيْنَٰهُم مَّآءً غَدَقًا ﴿١٦﴾ لِّنَفْتِنَهُمْ
فِيهِ ۚ وَمَن يُعْرِضْ عَن ذِكْرِ رَبِّهِۦ يَسْلُكْهُ عَذَابًا صَعَدًا ﴿١٧﴾ وَأَنَّ
ٱلْمَسَٰجِدَ لِلَّهِ فَلَا تَدْعُوا۟ مَعَ ٱللَّهِ أَحَدًا ﴿١٨﴾ وَأَنَّهُۥ لَمَّا قَامَ عَبْدُ ٱللَّهِ
يَدْعُوهُ كَادُوا۟ يَكُونُونَ عَلَيْهِ لِبَدًا ﴿١٩﴾ قُلْ إِنَّمَآ أَدْعُوا۟ رَبِّى وَلَآ أُشْرِكُ
بِهِۦٓ أَحَدًا ﴿٢٠﴾ قُلْ إِنِّى لَآ أَمْلِكُ لَكُمْ ضَرًّا وَلَا رَشَدًا ﴿٢١﴾ قُلْ إِنِّى
لَن يُجِيرَنِى مِنَ ٱللَّهِ أَحَدٌ وَلَنْ أَجِدَ مِن دُونِهِۦ مُلْتَحَدًا ﴿٢٢﴾ إِلَّا بَلَٰغًا
مِّنَ ٱللَّهِ وَرِسَٰلَٰتِهِۦ ۚ وَمَن يَعْصِ ٱللَّهَ وَرَسُولَهُۥ فَإِنَّ لَهُۥ نَارَ جَهَنَّمَ
خَٰلِدِينَ فِيهَآ أَبَدًا ﴿٢٣﴾ حَتَّىٰٓ إِذَا رَأَوْا۟ مَا يُوعَدُونَ فَسَيَعْلَمُونَ
مَنْ أَضْعَفُ نَاصِرًا وَأَقَلُّ عَدَدًا ﴿٢٤﴾ قُلْ إِنْ أَدْرِىٓ أَقَرِيبٌ
مَّا تُوعَدُونَ أَمْ يَجْعَلُ لَهُۥ رَبِّىٓ أَمَدًا ﴿٢٥﴾ عَٰلِمُ ٱلْغَيْبِ فَلَا
يُظْهِرُ عَلَىٰ غَيْبِهِۦٓ أَحَدًا ﴿٢٦﴾ إِلَّا مَنِ ٱرْتَضَىٰ مِن رَّسُولٍ فَإِنَّهُۥ
يَسْلُكُ مِنۢ بَيْنِ يَدَيْهِ وَمِنْ خَلْفِهِۦ رَصَدًا ﴿٢٧﴾ لِّيَعْلَمَ أَن قَدْ أَبْلَغُوا۟
رِسَٰلَٰتِ رَبِّهِمْ وَأَحَاطَ بِمَا لَدَيْهِمْ وَأَحْصَىٰ كُلَّ شَىْءٍ عَدَدًۢا ﴿٢٨﴾

(14) Bi rastî (piştî me li Quranê guhdarî kir) hin ji me misliman bûn (û bawerî bi Pêxember anî) û hin ji me sitemkarî kirin (wan bawerî bi Pêxember neanî). Vêca kî ku misliman bibe, ha ew in ên ku bi ser riya heq ve bûne.

(15) Herçî yên ku ji riya heq derketine (bawerî bi Pêxember neanî), ew ardûyê dojehê ne.

(16) Eger ew (ên kafir) di riya îslamê de biçûna, Me yê baranek pir bi ser wan de bibaranda û risqê wan berfireh bikira…

(17) Da ku em wan tê de biceribênin. Kî berê xwe ji kitêba Rebbê xwe vegerîne, Xweda dê wî bixe ezabekî dijwar.

(18) Bêguman mizgeft ên Xwedê ne. Nexwe digel Xwedê li ber tu kesî din negerin (û îbadetê wan nekin).

(19) Çi dema bendeyê Xweda (Muhemmed) rabû ku peyama Xwedê bang hildêre, cin li hawirdora wî kom bûn, hindik mabû ku herin ser milên hev (da li Quranê guhdarî bikin).

(20) Bibêje: Ez bes îbadetê ji bo Xwedayê xwe tenê dikim û ez tu kesî jê re nakim hevpişk.

(21) Bibêje: Bi rastî ez (bi serê xwe) ne dikarim zerarekê bidim we ne jî feydeyekê.

(22) Bibêje: Bi rastî (eger ez guhdariya Xwedê nekim û peyama wî negihînim) tu kes nikare min ji (cezayê) Xwedê biparêze û ez ji Wî pê ve asêgehekê jî nabînim (ku xwe tê de biparêzim).

(23) Ji bilî ku ez peyamên Xwedê ragihînim (ez nikarim tiştekî bikim). Êdî kî guhdariya Xwedê û pêxemberê wî neke, vêca bi rastî jê re agirê dojehê heye û heta hetayê ew dê tê de bimîne.

(24) Heta ku ew ezabê ku peymana wî ji wan re hatî dayîn dibînin, vêca dê ew bizanin ji aliyê arîkariyê ve ka kî qelstir û ji aliyê hejmarê ve kî kêmtir e (ew an jî misliman).

(25) Bibêje: Ez (bi xwe) nizanim ma gelo ew ezabê ku peymana wî ji we re hatiye dayîn, nêzik e yan jî Xwedayê min dê ji bo wî demeke dûr û dirêj deyne.

(26) Xwedê zanayê nepeniyê ye. Ew xeyba (raza) xwe ji tu kesî re aşkera neke.

(27) Lê belê ew pêxemberê ku Xwedê wî bivê ji vê cuda ye. Bi rastî Xwedê li pêşiya wî û pişt wî (ji melayîketan) çavdêran dişîne (da ku wî ji şeytanan biparêzin).

(28) Da ku bi vî awayî Xwedê bide zanîn ku pêxemberan peyamên Xwedayê xwe (ji xelkê re) ragihandine. Xwedê bi ya li cem wan e dizane û ji aliyê hejmarê ve her tişt yeko yek jimartiye (û tomar kiriye).

سُورَةُ الْمُزَّمِّلِ

آياتها ٢٠ — ترتيبها ٧٣

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

يَٰٓأَيُّهَا ٱلْمُزَّمِّلُ ﴿١﴾ قُمِ ٱلَّيْلَ إِلَّا قَلِيلًا ﴿٢﴾ نِّصْفَهُۥٓ أَوِ ٱنقُصْ مِنْهُ قَلِيلًا
﴿٣﴾ أَوْ زِدْ عَلَيْهِ وَرَتِّلِ ٱلْقُرْءَانَ تَرْتِيلًا ﴿٤﴾ إِنَّا سَنُلْقِى عَلَيْكَ قَوْلًا
ثَقِيلًا ﴿٥﴾ إِنَّ نَاشِئَةَ ٱلَّيْلِ هِىَ أَشَدُّ وَطْـًٔا وَأَقْوَمُ قِيلًا ﴿٦﴾ إِنَّ لَكَ فِى
ٱلنَّهَارِ سَبْحًا طَوِيلًا ﴿٧﴾ وَٱذْكُرِ ٱسْمَ رَبِّكَ وَتَبَتَّلْ إِلَيْهِ تَبْتِيلًا ﴿٨﴾
رَّبُّ ٱلْمَشْرِقِ وَٱلْمَغْرِبِ لَآ إِلَٰهَ إِلَّا هُوَ فَٱتَّخِذْهُ وَكِيلًا ﴿٩﴾ وَٱصْبِرْ
عَلَىٰ مَا يَقُولُونَ وَٱهْجُرْهُمْ هَجْرًا جَمِيلًا ﴿١٠﴾ وَذَرْنِى وَٱلْمُكَذِّبِينَ
أُو۟لِى ٱلنَّعْمَةِ وَمَهِّلْهُمْ قَلِيلًا ﴿١١﴾ إِنَّ لَدَيْنَآ أَنكَالًا وَجَحِيمًا ﴿١٢﴾
وَطَعَامًا ذَا غُصَّةٍ وَعَذَابًا أَلِيمًا ﴿١٣﴾ يَوْمَ تَرْجُفُ ٱلْأَرْضُ وَٱلْجِبَالُ
وَكَانَتِ ٱلْجِبَالُ كَثِيبًا مَّهِيلًا ﴿١٤﴾ إِنَّآ أَرْسَلْنَآ إِلَيْكُمْ رَسُولًا شَٰهِدًا
عَلَيْكُمْ كَمَآ أَرْسَلْنَآ إِلَىٰ فِرْعَوْنَ رَسُولًا ﴿١٥﴾ فَعَصَىٰ فِرْعَوْنُ ٱلرَّسُولَ
فَأَخَذْنَٰهُ أَخْذًا وَبِيلًا ﴿١٦﴾ فَكَيْفَ تَتَّقُونَ إِن كَفَرْتُمْ يَوْمًا يَجْعَلُ
ٱلْوِلْدَٰنَ شِيبًا ﴿١٧﴾ ٱلسَّمَآءُ مُنفَطِرٌۢ بِهِۦ ۚ كَانَ وَعْدُهُۥ مَفْعُولًا ﴿١٨﴾
إِنَّ هَٰذِهِۦ تَذْكِرَةٌ ۖ فَمَن شَآءَ ٱتَّخَذَ إِلَىٰ رَبِّهِۦ سَبِيلًا ﴿١٩﴾

# SÛREYÊ MUZZEMMIL

Sûreyê Muzzemmil bîst (20) ayet e. Ayetên 10, 11, û 20'em li Medîneyê û yên din tev li Mekkê daketine. Sûre, navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva Muzzemmil derbas bûye û bi mehneya "yê ku cil li xwe werda" ye.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

(1) Hey ê ku cil li xwe werdaye (mexsed pê Pêxember e)!

(2) Ji bilî hindikî ji şevê, tu rabe nimêj bike….

(3) Nîvê wê, yan ji nîvê wê kêmtir…

(4) An ji nîvê wê zêdetir rabe nimêj bike û Quranê hêdî hêdî, bi hizr û tefekkur bixwîne.

(5) Bi rastî em ê Quraneke giran nazilî ser te bikin.

(6) Bêguman îbadetê şevê bandora wî zêdetir e û bêhtir muwafiqê dil e û xwendina tê de duristir û mikûmtir e.

(7) Bi rastî bi rojê, ji te re meşxuliyeteke dirêj heye (ji bo tu karên xwe bikî).

(8) Navê Rebbê xwe di bîr bîne û xwe ji bo îbadetê wî vala bike.

(9) Ew hem Xwedayê rojhilat hem jî yê rojava ye. Ji Wî pê ve tu Xweda nîn in. Nexwe ji xwe re bike wekîl û karspêr.

(10) Li hemberî gotinên pûtperestan xwe ragire û bi xweşikayî dev ji wan berde.

(11) Min û wan bêbawerên halxweş, ji hev re bihêle (ez ê ceza bidim wan) û hinekî muhletê bide wan.

(12) Bêguman li bal me (ji wan re) qeyd û zincîrên giran, dojeheke sincirî…

(13) Xwarineke bistrî û ezabekî dijwar heye.

(14) Roja erd û çiya dihejin, çiya dê bibin lodên xîz (qûm)ê û biherikin (û li ber bayê herin).

(15) Bi rastî çawa ku me ji Firewn (û civata wî) re pêxemberek (Mûsa) şandibû, her wisa me ji bo we jî pêxemberek (Muhemmed) şandiye ku ew ê li ser we bibe şahid.

(16) Lê belê Firewn li pêxember guhdarî nekir û pê bawerî neanî, vêca me jî bi hingavtineke dijwar û tûj ew hingavt.

(17) Eger hûn bawerî neyînin, hûn ê çawa xwe ji ezabê rojeke wisan biparêzin ku zarokan pîr û kal dike?

(18) Asîman bi xwe jî dê ji (tirsa) wê (rojê) bibe du şeq. Peymana Xwedê her dê were cih.

(19) Bi rastî eva han bîranîn û şîretek e, vêca kî bixwaze dê riyekê bigire ku wî bigihîne Xwedayê wî (ew jî riya baweriyê ye).

۞ إِنَّ رَبَّكَ يَعْلَمُ أَنَّكَ تَقُومُ أَدْنَىٰ مِن ثُلُثَيِ ٱلَّيْلِ وَنِصْفَهُۥ وَثُلُثَهُۥ وَطَآئِفَةٌ
مِّنَ ٱلَّذِينَ مَعَكَ ۚ وَٱللَّهُ يُقَدِّرُ ٱلَّيْلَ وَٱلنَّهَارَ ۚ عَلِمَ أَن لَّن تُحْصُوهُ فَتَابَ
عَلَيْكُمْ ۖ فَٱقْرَءُوا۟ مَا تَيَسَّرَ مِنَ ٱلْقُرْءَانِ ۚ عَلِمَ أَن سَيَكُونُ مِنكُم مَّرْضَىٰ ۙ
وَءَاخَرُونَ يَضْرِبُونَ فِى ٱلْأَرْضِ يَبْتَغُونَ مِن فَضْلِ ٱللَّهِ ۙ وَءَاخَرُونَ
يُقَٰتِلُونَ فِى سَبِيلِ ٱللَّهِ ۖ فَٱقْرَءُوا۟ مَا تَيَسَّرَ مِنْهُ ۚ وَأَقِيمُوا۟ ٱلصَّلَوٰةَ وَءَاتُوا۟
ٱلزَّكَوٰةَ وَأَقْرِضُوا۟ ٱللَّهَ قَرْضًا حَسَنًا ۚ وَمَا تُقَدِّمُوا۟ لِأَنفُسِكُم مِّنْ خَيْرٍ تَجِدُوهُ
عِندَ ٱللَّهِ هُوَ خَيْرًا وَأَعْظَمَ أَجْرًا ۚ وَٱسْتَغْفِرُوا۟ ٱللَّهَ ۖ إِنَّ ٱللَّهَ غَفُورٌ رَّحِيمٌۢ ٢٠

**سُورَةُ ٱلْمُدَّثِّرِ** (ترتيبها ٧٤)

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

يَٰٓأَيُّهَا ٱلْمُدَّثِّرُ ١ قُمْ فَأَنذِرْ ٢ وَرَبَّكَ فَكَبِّرْ ٣ وَثِيَابَكَ فَطَهِّرْ ٤
وَٱلرُّجْزَ فَٱهْجُرْ ٥ وَلَا تَمْنُن تَسْتَكْثِرُ ٦ وَلِرَبِّكَ فَٱصْبِرْ ٧
فَإِذَا نُقِرَ فِى ٱلنَّاقُورِ ٨ فَذَٰلِكَ يَوْمَئِذٍ يَوْمٌ عَسِيرٌ ٩ عَلَى ٱلْكَٰفِرِينَ
غَيْرُ يَسِيرٍ ١٠ ذَرْنِى وَمَنْ خَلَقْتُ وَحِيدًا ١١ وَجَعَلْتُ لَهُۥ مَالًا
مَّمْدُودًا ١٢ وَبَنِينَ شُهُودًا ١٣ وَمَهَّدتُّ لَهُۥ تَمْهِيدًا ١٤ ثُمَّ يَطْمَعُ
أَنْ أَزِيدَ ١٥ كَلَّآ ۖ إِنَّهُۥ كَانَ لِءَايَٰتِنَا عَنِيدًا ١٦ سَأُرْهِقُهُۥ صَعُودًا ١٧

20 (Ya Muhemmed!) Bêguman Xwedayê te dizane ku tu ji sêyeka şevê nêzî du paran, (carinan) nîvê wê, (carinan jî) sêyeka wê radibî (nimêjê) û civatek ji wan bawermendên ligel te jî (radibin nimêjê). Xwedê ye yê ku şev û rojê teqdîr dike. Ji ber ku Wî zaniye hûn nikarin vê bijimêrin, li we boriye. Êdî ji Quranê ya ku hûn bikarin (wê) bixwînin. Xwedê dizane ku dê ji nava we nexweş çêbin, hinekî din dê li erdê bigerin û ji kerema Xwedê risq bixwazin û hinekî din jî dê di riya Xwedê de şer bikin. Nexwe ji Quranê ya ku hûn bikarin bixwînin. Berdewamî nimêj bikin, zekata malê xwe bidin û di riya Xwedê de xêran bikin. Hûn ji xêrê çi li pêşiya xwe ji bo xwe bişînin axiretê, hûn ê li cem Xwedayê xwe çêtir û mezintirê wê bibînin. Lêborîna xwe ji Xwedê bixwazin. Bi rastî Xwedê (ji bo bawermendan) gunehjêbir û dilovan e.

# SÛREYÊ MUDDESSIR

Sûreyê El-Muddessir pêncî û şeş (56) ayet e. Li Mekkê daketiye û sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de bêjeya Muddessirderbas bûye û bi mehneya "yê ku cil li xwe werdaye/cil bi ser xwe de kiriye."

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

1 Hey ê ku cil li xwe werdaye (mexsed pê pêxemberê me ye)!

2 Rabe karê xwe bike, êdî (xelkê bi emr û fermanên Xwedê) hişyar bike.

3 Tenê Xwedayê xwe mezin bidêre.

4 Cilê xwe paqij bigire (yan jî dilê xwe ji gunehan paqij bike).

5 Ji pûtperestiyê xwe dûr bigire.

6 Li ser kesî qenciyê neke minnet, bi niyeta ku zêdetir bê şûnê tu qenciyê bikê.

7 Vêca ji bo Xwedayê xwe li ser cefayê, sebrê bikêşe.

8 Gava ku di sûrê de bê pifkirin…

9 Vêca ha ew roj, rojeke giran û dijwar e.

10 Ew li ser kafiran (hîç jî) ne hêsan e.

11 Tu min û wî kesê ku min ew bi tenê (bêmal û zarok) afirandiye, ji hev re bihêle.

12 Paşî min malekî pir dayê û min ew kire xwedanmilk…

13 Min kur danê ku her tim li ber wî hazir bûn…

14 Min jê re dinyadarî (nîmet û rûmet) raxist…

15 Piştî vê hê jî hêvî dike ku ez (nîmetên xwe jê re) zêdetir bikim (û axiretê jî bidimê).

16 Nexêr (bila ew vê hêviyê hiç meke)! Bi rastî ew li dijî ayetên me rikdar e (pir tûj û serhişk e).

17 Ez ê wî di ezabekî ku nayê tehemulkirin de, wer bikim. Yan jî ez ê berê wî bidim palekî agirî ku çiqas hilkişe dîsa bikeve cihê xwe.

إِنَّهُۥ فَكَّرَ وَقَدَّرَ ﴿١٨﴾ فَقُتِلَ كَيْفَ قَدَّرَ ﴿١٩﴾ ثُمَّ قُتِلَ كَيْفَ قَدَّرَ ﴿٢٠﴾ ثُمَّ نَظَرَ
﴿٢١﴾ ثُمَّ عَبَسَ وَبَسَرَ ﴿٢٢﴾ ثُمَّ أَدْبَرَ وَٱسْتَكْبَرَ ﴿٢٣﴾ فَقَالَ إِنْ هَٰذَآ إِلَّا سِحْرٌ
يُؤْثَرُ ﴿٢٤﴾ إِنْ هَٰذَآ إِلَّا قَوْلُ ٱلْبَشَرِ ﴿٢٥﴾ سَأُصْلِيهِ سَقَرَ ﴿٢٦﴾ وَمَآ أَدْرَىٰكَ
مَا سَقَرُ ﴿٢٧﴾ لَا تُبْقِى وَلَا تَذَرُ ﴿٢٨﴾ لَوَّاحَةٌ لِّلْبَشَرِ ﴿٢٩﴾ عَلَيْهَا تِسْعَةَ عَشَرَ
﴿٣٠﴾ وَمَا جَعَلْنَآ أَصْحَٰبَ ٱلنَّارِ إِلَّا مَلَٰٓئِكَةً ۙ وَمَا جَعَلْنَا عِدَّتَهُمْ إِلَّا فِتْنَةً
لِّلَّذِينَ كَفَرُوا۟ لِيَسْتَيْقِنَ ٱلَّذِينَ أُوتُوا۟ ٱلْكِتَٰبَ وَيَزْدَادَ ٱلَّذِينَ ءَامَنُوٓا۟ إِيمَٰنًا ۙ
وَلَا يَرْتَابَ ٱلَّذِينَ أُوتُوا۟ ٱلْكِتَٰبَ وَٱلْمُؤْمِنُونَ ۙ وَلِيَقُولَ ٱلَّذِينَ فِى قُلُوبِهِم مَّرَضٌ
وَٱلْكَٰفِرُونَ مَاذَآ أَرَادَ ٱللَّهُ بِهَٰذَا مَثَلًا ۚ كَذَٰلِكَ يُضِلُّ ٱللَّهُ مَن يَشَآءُ وَيَهْدِى
مَن يَشَآءُ ۚ وَمَا يَعْلَمُ جُنُودَ رَبِّكَ إِلَّا هُوَ ۚ وَمَا هِىَ إِلَّا ذِكْرَىٰ لِلْبَشَرِ ﴿٣١﴾ كَلَّا
وَٱلْقَمَرِ ﴿٣٢﴾ وَٱلَّيْلِ إِذْ أَدْبَرَ ﴿٣٣﴾ وَٱلصُّبْحِ إِذَآ أَسْفَرَ ﴿٣٤﴾ إِنَّهَا لَإِحْدَى
ٱلْكُبَرِ ﴿٣٥﴾ نَذِيرًا لِّلْبَشَرِ ﴿٣٦﴾ لِمَن شَآءَ مِنكُمْ أَن يَتَقَدَّمَ أَوْ يَتَأَخَّرَ ﴿٣٧﴾ كُلُّ
نَفْسٍۭ بِمَا كَسَبَتْ رَهِينَةٌ ﴿٣٨﴾ إِلَّآ أَصْحَٰبَ ٱلْيَمِينِ ﴿٣٩﴾ فِى جَنَّٰتٍ يَتَسَآءَلُونَ
﴿٤٠﴾ عَنِ ٱلْمُجْرِمِينَ ﴿٤١﴾ مَا سَلَكَكُمْ فِى سَقَرَ ﴿٤٢﴾ قَالُوا۟ لَمْ نَكُ مِنَ
ٱلْمُصَلِّينَ ﴿٤٣﴾ وَلَمْ نَكُ نُطْعِمُ ٱلْمِسْكِينَ ﴿٤٤﴾ وَكُنَّا نَخُوضُ مَعَ
ٱلْخَآئِضِينَ ﴿٤٥﴾ وَكُنَّا نُكَذِّبُ بِيَوْمِ ٱلدِّينِ ﴿٤٦﴾ حَتَّىٰٓ أَتَىٰنَا ٱلْيَقِينُ ﴿٤٧﴾

18 Bi rastî ew fikirî û pîva (xwest der heqê Quranê de tiştekî bibêje).

19 Vêca Xwedêkuşto çi fikirî û pîva!

20 Paşê dîsa Xwedêkuşto çi got û çawa got!

21 Piştre dîsa fikirî (da hizra xwe)…

22 Paşê rûyê xwe tirş û tehl kir.

23 Paşê pişta xwe da heqiyê û xwe li serê mezin kir.

24 Êdî got: Ev (Quran) bes sêreke ku (ji sêrbazan) hatiye veguhastin.

25 Hebe nebe ev gotina mirovan e (ne gotina Xwedê ye).

26 Ez ê wî biavêjim seqerê (agirê sincirî).

27 Ma tu çi dizanî ka seqer çi ye?

28 Ew (ji bedenê) ne tiştekî dihêle ne jî berdide.

29 Ew çermê însên diperitîne (û disoje).

30 Li ser seqerê nozdeh (zebaniyên notirvan) hene.

31 Me wezîfeya kar û barên dojehê tenê da melayîketan û Me hejmara wan (notirvanan) jî kire ceribandin da ku kitabî (cihû û filah) ji dil bawer bikin û da baweriya bawermendan jî zêdetir bibe, da xwedankitêb û bawermend (di hejmara wan de) nekevin gumanê û da ew kesên ku di dilên wan de nexweşî (nîfaq) heye û yên kafir bibêjin; mexseda Xwedê bi vê hejmarê çi ye? Ha wisa Xwedê kî bixwaze ji rê dixe û kî jî bixwaze tîne riya rast. Ji Xwedayê te pê ve kes (bi hejmara) leşkerên Xwedayê te nizane. Ev seqer (dojeh) ji bo mirovan tenê şîret û ders e.

32 **32-** Nexêr, ne mîna wan e! Sond bi heyvê…

33 Sond bi şevê gava bi tarîtiya xwe ve diçe..

34 Sond bi spêdeyê gava bi ronahiya xwe ve tê…

35 Bi rastî ev cehenem yek ji belayên mezin e.

36 Ji bo însanan agahdarî ye (da guhdariya fermanên Xwedê bikin)

37 Ji bo kesê ku bixwaze (di qenciyê de) bi pêş ve here yan jî (bi kirina gunehan) li paş bimîne.

38 Her nefs di gerewa kirinên xwe de ye.

39 Ji bilî kesên ku (deftera emelê wan) li rexê wan ê rastê hatiye dayîn, ev cuda ne…

40 Di bihiştan de ji hev pirs dikin.

41 Ji rewşa gunehkaran…

42 Ji gunehkaran dipirsin; çi tiştî hûn xistine vî agirê sincirî?

43 Gunehkaran got: Di dinyaê de me nimêj nedikir.

44 Me xwarin nedida feqîr û belengazan.

45 Me jî wekî xelkê xwe noqî xeberdana pûç û batil dikir, çi baş çi xerab.

46 Me li dinyayê bawerî bi roja cezadanê nedianî.

47 Di wî rewşê de heta mirin bi ser me de hat.

فَمَا تَنفَعُهُمْ شَفَٰعَةُ ٱلشَّٰفِعِينَ ﴿٤٨﴾ فَمَا لَهُمْ عَنِ ٱلتَّذْكِرَةِ مُعْرِضِينَ
﴿٤٩﴾ كَأَنَّهُمْ حُمُرٌ مُّسْتَنفِرَةٌ ﴿٥٠﴾ فَرَّتْ مِن قَسْوَرَةٍۭ ﴿٥١﴾ بَلْ يُرِيدُ
كُلُّ ٱمْرِئٍ مِّنْهُمْ أَن يُؤْتَىٰ صُحُفًا مُّنَشَّرَةً ﴿٥٢﴾ كَلَّا ۖ بَل لَّا يَخَافُونَ
ٱلْءَاخِرَةَ ﴿٥٣﴾ كَلَّآ إِنَّهُۥ تَذْكِرَةٌ ﴿٥٤﴾ فَمَن شَآءَ ذَكَرَهُۥ ﴿٥٥﴾
وَمَا يَذْكُرُونَ إِلَّآ أَن يَشَآءَ ٱللَّهُ ۚ هُوَ أَهْلُ ٱلتَّقْوَىٰ وَأَهْلُ ٱلْمَغْفِرَةِ ﴿٥٦﴾

ترتيبها ٧٥ — سُورَةُ القِيَامَةِ — آياتها ٤٠

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

لَآ أُقْسِمُ بِيَوْمِ ٱلْقِيَٰمَةِ ﴿١﴾ وَلَآ أُقْسِمُ بِٱلنَّفْسِ ٱللَّوَّامَةِ ﴿٢﴾ أَيَحْسَبُ
ٱلْإِنسَٰنُ أَلَّن نَّجْمَعَ عِظَامَهُۥ ﴿٣﴾ بَلَىٰ قَٰدِرِينَ عَلَىٰٓ أَن نُّسَوِّىَ بَنَانَهُۥ ﴿٤﴾ بَلْ
يُرِيدُ ٱلْإِنسَٰنُ لِيَفْجُرَ أَمَامَهُۥ ﴿٥﴾ يَسْـَٔلُ أَيَّانَ يَوْمُ ٱلْقِيَٰمَةِ ﴿٦﴾ فَإِذَا بَرِقَ ٱلْبَصَرُ
﴿٧﴾ وَخَسَفَ ٱلْقَمَرُ ﴿٨﴾ وَجُمِعَ ٱلشَّمْسُ وَٱلْقَمَرُ ﴿٩﴾ يَقُولُ ٱلْإِنسَٰنُ يَوْمَئِذٍ
أَيْنَ ٱلْمَفَرُّ ﴿١٠﴾ كَلَّا لَا وَزَرَ ﴿١١﴾ إِلَىٰ رَبِّكَ يَوْمَئِذٍ ٱلْمُسْتَقَرُّ ﴿١٢﴾ يُنَبَّؤُا۟ ٱلْإِنسَٰنُ
يَوْمَئِذٍۭ بِمَا قَدَّمَ وَأَخَّرَ ﴿١٣﴾ بَلِ ٱلْإِنسَٰنُ عَلَىٰ نَفْسِهِۦ بَصِيرَةٌ ﴿١٤﴾ وَلَوْ أَلْقَىٰ
مَعَاذِيرَهُۥ ﴿١٥﴾ لَا تُحَرِّكْ بِهِۦ لِسَانَكَ لِتَعْجَلَ بِهِۦٓ ﴿١٦﴾ إِنَّ عَلَيْنَا جَمْعَهُۥ
وَقُرْءَانَهُۥ ﴿١٧﴾ فَإِذَا قَرَأْنَٰهُ فَٱتَّبِعْ قُرْءَانَهُۥ ﴿١٨﴾ ثُمَّ إِنَّ عَلَيْنَا بَيَانَهُۥ ﴿١٩﴾

(48) Vêca mehderiya mehdervanan tu feydê nade wan.
(49) Çi li wan qewimiye ku pişta xwe didine Quranê?
(50) Tu dibêjî qey ew kerên kovî ne…
(51) Ku ji şêr direvin.
(52) Xwedêgiravî her yek ji wan, diviya ku ji bo wî kitêbek bihata.
(53) Nexêr, ev nabe! Belkî ew ji axiretê natirsin,
(54) Nexêr ne wisan e, Bi rastî Quran gotina Xwedê ye, bîranîn û hişyarî ye!
(55) Kî bixwaze dê ji wê pend/şîret bigire.
(56) Bes ê ku Xwedê ji bo wî viyabe dê şîretê jê wergire. Her Xwedê ye hêjayî parêzkariyê û hêjayî gunehjêbirinê.

# SÛREYÊ QIYAMET

Sûreyê Qiyamet çil (40) ayet e. Li Mekeyê daketiye. Navê sûre jji ayeta pêşîn tê ku tê de peyva Qiyamet derbas bûye û bi mehneya “xerabûna dinyayê” ye.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

(1) Sond bi roja qiyametê (ku ew domahîka dinyayê ye)…
(2) Sond bi nefsa xêrxwaz û li xwe lomekar (dibêje ma çima min xeletî kir û ji bo çi min qencî nekir?).
(3) Ma ji însên we ye ku em careke din nikarin hestiyên wî li hev bicivînin?
(4) Belê em dikarin movikên wî jî mîna berê durist bikin.
(5) Lê belê însan dixwaze ku riya xerabiyê her li ber vekirî bimîne.
(6) Yên kafir (ji tinaz ve) dipirsin: Ka roja qiyametê kengê ye?
(7) Vêca gava çav şaş û zeloq dibin…
(8) Heyv xerab dibe, (roniya wê diçe û tarî dibe)…
(9) Roj û heyv li hev tên komkirin (û dibin yek)!
(10) (Ha) Wê rojê însan dê bibêje: Ez bi ku ve birevim (ma gelo cihê revê heye)?
(11) Na! Cihê revê tune ye!
(12) Wê rojê veger tenê bi bal Xwedayê te ve ye.
(13) Wê rojê ji însên re kar û kiryarên ku kirin (yên hûr û gir) dê bên gotin.
(14) Êdî însan bi xwe şahidê ser nefsa xwe ye.
(15) Çendî ew hênceta xwe bîne jî (ji wî nayê qebûlkirin).
(16) (Ya Muhemmed!) Ji bo bi lez tu wehyê wergirî, zimanê xwe nelivîne.
(17) Bêguman li ser me ye ku em vê Quranê di sînga te de kom bikin û bi te bidin xwendin.
(18) Nexwe gava (bi navgîna Cibraîl) me Quran ji bo te xwend, tu xwendina wî bişopîne (û guhdariya wê bike).
(19) Piştre teqez ravekirina Quranê û ronkirina wê jî li ser me ye.

(20) Nexêr, neku hûn li hatina qiyametê bişik in, belê hûn li nîmetên dinyayê bilez in.
(21) (Hûn gelek hez ji dinyayê dikin û) hûn (kar û barê) axiretê dihêlin.
(22) Wê rojê, hin rû hene ku ronak û geş in.
(23) Ew dê li Xwedayê xwe binêrin (û cemala Wî bibînin).
(24) Hin rû jî hene ku ew tirş û reben in.
(25) Yeqîn dike ku sosretek (ezabekî dijwar) dê bi ser de bê ku ew ê hestiyê pişta wî bişikîne.
(26) Nexêr, wisa nekin! Çi gava ruh bigihîje hestiyê qirikê (û mirov kete ber sikratê)..
(27) Xelkê mala wî jî gotin: Ka kî heye ku dermanekî jê re bibînê û wî mufa (şîfa) bike?
(28) Yeqîn kir ku mirina wî hat û destê wî ji mala wî qut dibe.
(29) Û çaqên wî li hev aliyan (û nikarî tev bigere).
(30) Ha wê rojê ber bi Xwedayê te ve dê bêne ajotin.
(31) Ne wî (bi Quranê) îman anî, ne jî nimêj kir.
(32) Lê belê (bi Xwedê û pêxemberê wî) bawerî neanî û berê xwe jê vegerand.
(33) Piştre (li ser kufra xwe nesekinî) bi qaretî û devavêtin çû cem ehlê (alîgirên) xwe.
(34) (Hey bêbawer!) Ezab li ser ezab ji bo te be.
(35) (Hey bêbawer!) Ezab li ser ezab ji bo te be!
(36) Ma ji însanî we ye ku dê wisa bimîne (hesabê kar û kiryaran jê neyê kirin)?
(37) Ma ew ne ji dilopek ava meniyê ya ku di malzarokê de dihat rêtin çêbûye?
(38) Paşê ew bûye parçeyek xwîna stûr, vêca Xwedê ew çêkir, durist kir û şekil û dirûv dayê.
(39) Êdî ji însên mêr û jin çêkirin (û kinês bi dûv xist).
(40) Erê ma ew Xwedayê ku hûn wisa çêkirin nikare miriyan jî dîsa sax bike?

كَلَّا بَلْ تُحِبُّونَ ٱلْعَاجِلَةَ ﴿٢٠﴾ وَتَذَرُونَ ٱلْـَٔاخِرَةَ ﴿٢١﴾ وُجُوهٌ يَوْمَئِذٍ نَّاضِرَةٌ ﴿٢٢﴾
إِلَىٰ رَبِّهَا نَاظِرَةٌ ﴿٢٣﴾ وَوُجُوهٌ يَوْمَئِذٍۭ بَاسِرَةٌ ﴿٢٤﴾ تَظُنُّ أَن يُفْعَلَ بِهَا فَاقِرَةٌ ﴿٢٥﴾
كَلَّآ إِذَا بَلَغَتِ ٱلتَّرَاقِيَ ﴿٢٦﴾ وَقِيلَ مَنْۜ رَاقٍ ﴿٢٧﴾ وَظَنَّ أَنَّهُ ٱلْفِرَاقُ ﴿٢٨﴾ وَٱلْتَفَّتِ
ٱلسَّاقُ بِٱلسَّاقِ ﴿٢٩﴾ إِلَىٰ رَبِّكَ يَوْمَئِذٍ ٱلْمَسَاقُ ﴿٣٠﴾ فَلَا صَدَّقَ وَلَا صَلَّىٰ
﴿٣١﴾ وَلَٰكِن كَذَّبَ وَتَوَلَّىٰ ﴿٣٢﴾ ثُمَّ ذَهَبَ إِلَىٰٓ أَهْلِهِۦ يَتَمَطَّىٰٓ ﴿٣٣﴾ أَوْلَىٰ لَكَ
فَأَوْلَىٰ ﴿٣٤﴾ ثُمَّ أَوْلَىٰ لَكَ فَأَوْلَىٰٓ ﴿٣٥﴾ أَيَحْسَبُ ٱلْإِنسَٰنُ أَن يُتْرَكَ سُدًى ﴿٣٦﴾
أَلَمْ يَكُ نُطْفَةً مِّن مَّنِيٍّ يُمْنَىٰ ﴿٣٧﴾ ثُمَّ كَانَ عَلَقَةً فَخَلَقَ فَسَوَّىٰ ﴿٣٨﴾ فَجَعَلَ مِنْهُ
ٱلزَّوْجَيْنِ ٱلذَّكَرَ وَٱلْأُنثَىٰٓ ﴿٣٩﴾ أَلَيْسَ ذَٰلِكَ بِقَٰدِرٍ عَلَىٰٓ أَن يُحْـِۧىَ ٱلْمَوْتَىٰ ﴿٤٠﴾

## سُورَةُ الإِنسَانِ

ترتيبها ٧٦ — آياتها ٣١

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

هَلْ أَتَىٰ عَلَى ٱلْإِنسَٰنِ حِينٌ مِّنَ ٱلدَّهْرِ لَمْ يَكُن شَيْـًٔا مَّذْكُورًا ﴿١﴾
إِنَّا خَلَقْنَا ٱلْإِنسَٰنَ مِن نُّطْفَةٍ أَمْشَاجٍ نَّبْتَلِيهِ فَجَعَلْنَٰهُ سَمِيعًۢا
بَصِيرًا ﴿٢﴾ إِنَّا هَدَيْنَٰهُ ٱلسَّبِيلَ إِمَّا شَاكِرًا وَإِمَّا كَفُورًا ﴿٣﴾
إِنَّآ أَعْتَدْنَا لِلْكَٰفِرِينَ سَلَٰسِلَا۟ وَأَغْلَٰلًا وَسَعِيرًا ﴿٤﴾ إِنَّ
ٱلْأَبْرَارَ يَشْرَبُونَ مِن كَأْسٍ كَانَ مِزَاجُهَا كَافُورًا ﴿٥﴾

# SÛREYÊ ÎNSAN

Sûreyê Însan, sî û yek (31) ayet e. Li gorî hin rîwayetan li Mekkê û li gorî hi rîwayetên din jî lî Medîneyê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku de peyva însan derbas bûye û bi mehneya "mirov" e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

(1) Bi rastî di ser însên re, zemanekî dirêj derbas bû ku ew nebû û behsa wî nedihat kirin (yanî ne însan ne jî behs navê wî hebû).
(2) Bêguman me însan ji dilopek avika/meniya (ji mêr û jinê) tevlîhev afirand da ku em wî bi ceribînin, vêca me ew bi guh û çav kirin.
(3) Me riya rast nîşan dayê, êdî yan şukirdar be (qencî û kerema Xwedê ji b neke û rêka qenciyê bigire) yan jî dê nankor be (rêka xerabiyê bigire).

عَيْنًا يَشْرَبُ بِهَا عِبَادُ اللَّهِ يُفَجِّرُونَهَا تَفْجِيرًا ﴿٦﴾ يُوفُونَ بِالنَّذْرِ وَيَخَافُونَ
يَوْمًا كَانَ شَرُّهُ مُسْتَطِيرًا ﴿٧﴾ وَيُطْعِمُونَ الطَّعَامَ عَلَىٰ حُبِّهِ مِسْكِينًا
وَيَتِيمًا وَأَسِيرًا ﴿٨﴾ إِنَّمَا نُطْعِمُكُمْ لِوَجْهِ اللَّهِ لَا نُرِيدُ مِنكُمْ جَزَاءً وَلَا شُكُورًا
﴿٩﴾ إِنَّا نَخَافُ مِن رَّبِّنَا يَوْمًا عَبُوسًا قَمْطَرِيرًا ﴿١٠﴾ فَوَقَاهُمُ اللَّهُ شَرَّ ذَٰلِكَ
الْيَوْمِ وَلَقَّاهُمْ نَضْرَةً وَسُرُورًا ﴿١١﴾ وَجَزَاهُم بِمَا صَبَرُوا جَنَّةً وَحَرِيرًا
﴿١٢﴾ مُّتَّكِئِينَ فِيهَا عَلَى الْأَرَائِكِ ۖ لَا يَرَوْنَ فِيهَا شَمْسًا وَلَا زَمْهَرِيرًا ﴿١٣﴾
وَدَانِيَةً عَلَيْهِمْ ظِلَالُهَا وَذُلِّلَتْ قُطُوفُهَا تَذْلِيلًا ﴿١٤﴾ وَيُطَافُ عَلَيْهِم بِآنِيَةٍ
مِّن فِضَّةٍ وَأَكْوَابٍ كَانَتْ قَوَارِيرَا ﴿١٥﴾ قَوَارِيرَا مِن فِضَّةٍ قَدَّرُوهَا تَقْدِيرًا ﴿١٦﴾
وَيُسْقَوْنَ فِيهَا كَأْسًا كَانَ مِزَاجُهَا زَنجَبِيلًا ﴿١٧﴾ عَيْنًا فِيهَا تُسَمَّىٰ سَلْسَبِيلًا
﴿١٨﴾ ۞ وَيَطُوفُ عَلَيْهِمْ وِلْدَانٌ مُّخَلَّدُونَ إِذَا رَأَيْتَهُمْ حَسِبْتَهُمْ لُؤْلُؤًا مَّنثُورًا
﴿١٩﴾ وَإِذَا رَأَيْتَ ثَمَّ رَأَيْتَ نَعِيمًا وَمُلْكًا كَبِيرًا ﴿٢٠﴾ عَالِيَهُمْ ثِيَابُ سُندُسٍ
خُضْرٌ وَإِسْتَبْرَقٌ ۖ وَحُلُّوا أَسَاوِرَ مِن فِضَّةٍ وَسَقَاهُمْ رَبُّهُمْ شَرَابًا
طَهُورًا ﴿٢١﴾ إِنَّ هَٰذَا كَانَ لَكُمْ جَزَاءً وَكَانَ سَعْيُكُم مَّشْكُورًا ﴿٢٢﴾ إِنَّا
نَحْنُ نَزَّلْنَا عَلَيْكَ الْقُرْآنَ تَنزِيلًا ﴿٢٣﴾ فَاصْبِرْ لِحُكْمِ رَبِّكَ وَلَا تُطِعْ
مِنْهُمْ آثِمًا أَوْ كَفُورًا ﴿٢٤﴾ وَاذْكُرِ اسْمَ رَبِّكَ بُكْرَةً وَأَصِيلًا ﴿٢٥﴾

(4) Bêguman me ji bo kafiran zincîr û qeyd (ên hesinî) û agirekî bipêt amade kirine.

(5) Bi rastî mirovê qenc, ên bawermend dê ji meykaseyeke ku kafûr tevlî wê bûye vexwin.

(6) (Ev av) kaniyeke wisa ye ku xwedênas (bendeyên Xwedê) jê vedixwin û devera bixwazin bi wê ve diherikînin (ew li ku bin, bi ku ve herin li dûv wan digere).

(7) Ew bend e, nezr û peymanên xwe tînin cih û ji rojeke wisa ditirsin ku kes ji şerê wê veder nîn e.

(8) Ew xwarina ku pêdiviya wan pê heye û jê hez dikin didin feqîr û sêwî û dîlan (êsîran).

(9) (Ji wan re dibêjin:) Em tenê ji bo rizaya Xwedê xwarinê didin we, em ji we tu perûyekê û tu spasiyekê naxwazin.

(10) Em (vê yekê dikin), ji ber ku em ji Xwedayê xwe ditirsin, da ku di rojeke giran û tehl de me biparêze.

(11) Vêca ji ber qenciya wan, Xwedê ew ji ezabê wê rojê parastin, rûgeşî û dilşadî dan ser wan.

(12) Xwedê, li beramberî sebra wan bi bihiştê û bi lixwekirina hevrîşim ew xelat kirin.

(13) Di cenetê de li ser textan paldayî ne, tê de, ne germê dibînin ne jî sermayê.

(14) Siya (dar û barê) cenetê nêzîkî wan e, fêkî û mêweyên wan daran ji wan re berdest e.

(15) (Xizmetkar) bi kaseyên zîvî û qedehên camî, spî û zelal li ber wan digerînin.

(16) Şûşeyên (wekî belor) ji zîv ku bi qasî dilbija (xelkê bihiştê, meyger wan kaseyan) bi pîvan dadigirin

(17) Xelkê bihiştê, tê de ji meyeke wisa têne avdayîn ku zencefîl tevî wê bûye.

(18) Ev şerab di bihişte de kaniyeke wisa ye ku jê re "Selsebil" tê gotin.

(19) Xizmetkarên law û her ciwan li ber xizmeta wan digerin, dema tu wan dibînî tu dibêjî qey ew sedefên belavbûyî ne.

(20) Dema tu lê dinêrî tu li wir dibînî ku milkekî mezin û xweşiyeke berfireh heye.

(21) Ji hevrîşmê tenik û stûr cilên bi xeml û kesk li ser wan in, bazinên zîvî di destên wan de û Xwedayê wan dê ji şerabeke paqij (ku nava wan ji hesed, kîn û bexîliyê paqij dike) wan av bide.

(22) (Xwedê ji wan re dibêje:) Bi rastî ha ev mukafata xebata we ye û me xebata we qebûl kir.

(23) (Ya Muhemmed!) Bi rastî me Quran li pey hev û hin bi hin ji te re hinart.

(24) Nexwe li ser gihandina hukmê Xwedayê xwe sebrê bikêşe û bi gotina tu gunehkarî yan jî tu bêbawerî meke.

(25) Sibeh û êvarê (berdewamî) navê Xwedayê xwe di bîr bîne.

26 Di beşeke şevê de ji Xwedê re nimêj bike, di beşa şevê ya dirêj de Rebbê xwe ji her kêmasiyê pak bidêre.
27 Ev bêbawer û muşrik gelek ji dinyayê hez dikin û pişta xwe didine rojeke ezabgiran.
28 Bes me ew ji tuneyî çêkirin û ezayên wan bi hev ve şidandin. Gava em bixwazin em ê hinekên ji wan çêtir bînin şûna wan.
29 Bêguman ev (Quran) şîret û bîranîn e. Vêca kî bixwaze dê bi bal Xwedayê xwe ve (ji xwe re) riyekê bigire (ku wî bigihîne Rebbê wî).
30 Bêyî vîna Xwedê, hûn nikarin karekî bivên. Bêguman Xwedê zana û karbinecih e.
31 Xweda kê bivê dixe nav rehmeta (ceneta) xwe. Herçî ku zalim in, Xwedê ji bo wan ezabekî dijwar amade kiriye.

## SÛREYÊ MURSELAT

Sûreyê Murselat, pêncî (50) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva Murselat derbas bûye û bi mehneya "şande û qasidan" e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

1 Sond bi wan bayên yek li dûv yekî tên şandin…
2 Vêca bi her bayên dijwar ku her tiştî tarûmar dikin…
3 Bi wan melayîketên ku ewran diajon ser cihên ku Xwedê dixwaze…
4 Bi wan melayîketên ku fermanên Xwedê tînin da ku heq û batilî, heram û helalî ji hev veqetînin…
5 Bi wan melayîketên ku wehya Xwedê ji pêxemberan re tînin…
6 Ji bo ku xelkê hêncetbir bikin an jî wan bitirsînin…
7 Bi rastî ew qiyameta ku peymana wê ji we re hatiye dayîn, teqez dê bê!
8 Vêca dema stêr rijiyan û şewqa wan nema…
9 Dema ku asîman qul bibe û biqelişe…
10 Dema çiya ji bin ve rabûn û belawela bibin…

وَمِنَ ٱلَّيۡلِ فَٱسۡجُدۡ لَهُۥ وَسَبِّحۡهُ لَيۡلٗا طَوِيلًا ﴿٢٦﴾ إِنَّ
هَٰٓؤُلَآءِ يُحِبُّونَ ٱلۡعَاجِلَةَ وَيَذَرُونَ وَرَآءَهُمۡ يَوۡمٗا ثَقِيلٗا ﴿٢٧﴾ نَّحۡنُ
خَلَقۡنَٰهُمۡ وَشَدَدۡنَآ أَسۡرَهُمۡۖ وَإِذَا شِئۡنَا بَدَّلۡنَآ أَمۡثَٰلَهُمۡ تَبۡدِيلًا ﴿٢٨﴾
إِنَّ هَٰذِهِۦ تَذۡكِرَةٞۖ فَمَن شَآءَ ٱتَّخَذَ إِلَىٰ رَبِّهِۦ سَبِيلٗا ﴿٢٩﴾
وَمَا تَشَآءُونَ إِلَّآ أَن يَشَآءَ ٱللَّهُۚ إِنَّ ٱللَّهَ كَانَ عَلِيمًا حَكِيمٗا ﴿٣٠﴾
يُدۡخِلُ مَن يَشَآءُ فِي رَحۡمَتِهِۦۚ وَٱلظَّٰلِمِينَ أَعَدَّ لَهُمۡ عَذَابًا أَلِيمَۢا ﴿٣١﴾

ترتيبها ٧٧ — سُورَةُ المُرۡسَلَاتِ — آياتها ٥٠

بِسۡمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحۡمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

وَٱلۡمُرۡسَلَٰتِ عُرۡفٗا ﴿١﴾ فَٱلۡعَٰصِفَٰتِ عَصۡفٗا ﴿٢﴾ وَٱلنَّٰشِرَٰتِ نَشۡرٗا ﴿٣﴾
فَٱلۡفَٰرِقَٰتِ فَرۡقٗا ﴿٤﴾ فَٱلۡمُلۡقِيَٰتِ ذِكۡرًا ﴿٥﴾ عُذۡرًا أَوۡ نُذۡرًا ﴿٦﴾ إِنَّمَا
تُوعَدُونَ لَوَٰقِعٞ ﴿٧﴾ فَإِذَا ٱلنُّجُومُ طُمِسَتۡ ﴿٨﴾ وَإِذَا ٱلسَّمَآءُ فُرِجَتۡ
﴿٩﴾ وَإِذَا ٱلۡجِبَالُ نُسِفَتۡ ﴿١٠﴾ وَإِذَا ٱلرُّسُلُ أُقِّتَتۡ ﴿١١﴾ لِأَيِّ يَوۡمٍ أُجِّلَتۡ
﴿١٢﴾ لِيَوۡمِ ٱلۡفَصۡلِ ﴿١٣﴾ وَمَآ أَدۡرَىٰكَ مَا يَوۡمُ ٱلۡفَصۡلِ ﴿١٤﴾ وَيۡلٞ يَوۡمَئِذٖ
لِّلۡمُكَذِّبِينَ ﴿١٥﴾ أَلَمۡ نُهۡلِكِ ٱلۡأَوَّلِينَ ﴿١٦﴾ ثُمَّ نُتۡبِعُهُمُ ٱلۡأٓخِرِينَ
﴿١٧﴾ كَذَٰلِكَ نَفۡعَلُ بِٱلۡمُجۡرِمِينَ ﴿١٨﴾ وَيۡلٞ يَوۡمَئِذٖ لِّلۡمُكَذِّبِينَ ﴿١٩﴾

11 Dema ji pêxemberan re ji bo hukimkirinê wext hat destnîşankirin (êdî qiyamet rabûye).
12 (Ev nîşan) Ji bo kîjan rojê hatine bipaşvexistin?
13 Ji bo roja jihevcudakirinê (ew roja ku qenc û neqenc ji hev têne veqetandin).
14 Ma tu çi dizanî ku roja jihevcudakirinê çi ye!
15 Wê rojê ezab û nexweşî ji bo bêbaweran be!
16 Erê ma me pêşiyên wan gunehkaran helak nekirin?
17 Piştre ma me gunehkarên piştî wan jî li pey wan nebirin.
18 Ha wisa em bi serê gunehkaran tînin!
19 Wê rojê ezab û nexweşî ji bo bêbaweran be!

أَلَمۡ نَخۡلُقكُّم مِّن مَّآءٖ مَّهِينٖ ٢٠ فَجَعَلۡنَٰهُ فِي قَرَارٖ مَّكِينٍ ٢١ إِلَىٰ قَدَرٖ
مَّعۡلُومٖ ٢٢ فَقَدَرۡنَا فَنِعۡمَ ٱلۡقَٰدِرُونَ ٢٣ وَيۡلٞ يَوۡمَئِذٖ لِّلۡمُكَذِّبِينَ ٢٤
أَلَمۡ نَجۡعَلِ ٱلۡأَرۡضَ كِفَاتًا ٢٥ أَحۡيَآءٗ وَأَمۡوَٰتٗا ٢٦ وَجَعَلۡنَا فِيهَا رَوَٰسِيَ
شَٰمِخَٰتٖ وَأَسۡقَيۡنَٰكُم مَّآءٗ فُرَاتٗا ٢٧ وَيۡلٞ يَوۡمَئِذٖ لِّلۡمُكَذِّبِينَ ٢٨
ٱنطَلِقُوٓاْ إِلَىٰ مَا كُنتُم بِهِۦ تُكَذِّبُونَ ٢٩ ٱنطَلِقُوٓاْ إِلَىٰ ظِلّٖ ذِي ثَلَٰثِ
شُعَبٖ ٣٠ لَّا ظَلِيلٖ وَلَا يُغۡنِي مِنَ ٱللَّهَبِ ٣١ إِنَّهَا تَرۡمِي بِشَرَرٖ
كَٱلۡقَصۡرِ ٣٢ كَأَنَّهُۥ جِمَٰلَتٞ صُفۡرٞ ٣٣ وَيۡلٞ يَوۡمَئِذٖ لِّلۡمُكَذِّبِينَ ٣٤
هَٰذَا يَوۡمُ لَا يَنطِقُونَ ٣٥ وَلَا يُؤۡذَنُ لَهُمۡ فَيَعۡتَذِرُونَ ٣٦ وَيۡلٞ يَوۡمَئِذٖ
لِّلۡمُكَذِّبِينَ ٣٧ هَٰذَا يَوۡمُ ٱلۡفَصۡلِۖ جَمَعۡنَٰكُمۡ وَٱلۡأَوَّلِينَ ٣٨ فَإِن كَانَ
لَكُمۡ كَيۡدٞ فَكِيدُونِ ٣٩ وَيۡلٞ يَوۡمَئِذٖ لِّلۡمُكَذِّبِينَ ٤٠ إِنَّ ٱلۡمُتَّقِينَ فِي
ظِلَٰلٖ وَعُيُونٖ ٤١ وَفَوَٰكِهَ مِمَّا يَشۡتَهُونَ ٤٢ كُلُواْ وَٱشۡرَبُواْ هَنِيٓـَٔۢا
بِمَا كُنتُمۡ تَعۡمَلُونَ ٤٣ إِنَّا كَذَٰلِكَ نَجۡزِي ٱلۡمُحۡسِنِينَ ٤٤ وَيۡلٞ يَوۡمَئِذٖ
لِّلۡمُكَذِّبِينَ ٤٥ كُلُواْ وَتَمَتَّعُواْ قَلِيلًا إِنَّكُم مُّجۡرِمُونَ ٤٦ وَيۡلٞ يَوۡمَئِذٖ
لِّلۡمُكَذِّبِينَ ٤٧ وَإِذَا قِيلَ لَهُمُ ٱرۡكَعُواْ لَا يَرۡكَعُونَ ٤٨ وَيۡلٞ
يَوۡمَئِذٖ لِّلۡمُكَذِّبِينَ ٤٩ فَبِأَيِّ حَدِيثِۭ بَعۡدَهُۥ يُؤۡمِنُونَ ٥٠

20 Ma me hûn ji aveke weza (bêqîmet) neafirandin?

21 Vêca me ew av di cihekî mikûm de bi cih kir (ku malzarok e).

22 Heta demeke diyarkirî.

23 Vêca em li ser çêkirin û şekildayîna wê qadir bûn, êdî em çi xweş qadir in!

24 Wê rojê ezab û nexweşî ji bo bêbaweran be!

25 Erê ma me erd ji bo we nekiriye xelkkhilgir?

26 Yên zindî li ser xwe radigire û yên mirî di nav xwe de vedişêre.

27 Me li erdê çiyayên cihgirtî û bilind afirandin û me aveke şîrîn û xweş daye we.

28 Wê rojê ezab û nexweşî ji bo bêbaweran be!

29 (Wê rojê ji wan re tê gotin:) De ber bi wî ezabê ve herin ew ê ku we pê bawer nedikir û we derew dizanî!

30 Ber bi siya dûkeleke wisa ve herin ku sê çiql e…

31 Ew li ser we ne dibe sî û sîwan, ne jî we ji guriya dojehê diparêze.

32 Ew dojeh çîkên mezin wekî avahiyan diavêje.

33 Çîkên dojehê didin pey hev tu dibêjî ew deveyên zer in.

34 Wê rojê ezab û nexweşî ji bo bêbaweran be!

35 Ew rojeke ku ji kesî re axaftin nîn e.

36 Destûr jî ji wan re nayê dayîn vêca ku mehna xwe bibêjin.

37 Wê rojê ezab û nexweşî ji bo bêbaweran be!

38 Ha ev roj, roja jihevcudakirinê ye û Me hûn û yên beriya we li hev civandin.

39 Vêca eger fend û plana we heye (ji bo hûn ji ezab rizgar bibin) bînin.

40 Wê rojê, ezab û nexweşî ji bo bêbaweran be!

41 Bêguman ên teqwadar li binê siyan û li serê kaniyan in.

42 Di (nava) mêweyên ku dilê wan dibijiyê de.

43 (Ji wan re tê gotin:) Ji ber wan kar û kiryarên we kirine; bixwin, vexwin û ji we re noşican be.

44 Ha em, qencîkarên rast û durist wisa xelat dikin.

45 Wê rojê, ezab û nexweşî ji bo bêbaweran be!

46 (Gelî bêbaweran!) Di dinyayê de bixwin, hinekî xweş bijîn! Bi rastî hûn sûckar û gunehkar in.

47 Wê rojê, ezab û nexweşî ji bo bêbaweran be!

48 Gava ji wan re dihate gotin nimêj bikin, nimêj nedikirin.

49 Wê rojê, ezab û nexweşî ji bo bêbaweran be!

50 Erê ma piştî Quranê dê bi kîjan gotinê bawerî bînin?!

# SÛREYÊ NEBE

Sûreyê Nebe çil (40) ayet e û li Mekkê daketiye. Navê sûre ji ayeta 2’em hatiye ku tê de peyva Nebe derbas bûye û bi ma’neya “agahî û xeber” e. Hin navên vî Sûreyî yên din jî ev in: Tesaul (jihevpirsîn) û Emme.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Pirsa çi ji hev dikin?

2 Pirsa xebera (bûyera) mezin ji hev dikin (ku ew roja qiyametê ye).

3 Ew roja ku der barê wê de dudil in (hin bawerî pê tînin, hin jî wê mandel dikin).

4 Nexêr, bila dudilî nebin! Ew ê hê bizanin!

5 Dîsa nexêr! Ew ê bizanin (dema heqîqet bi çavê serê xwe dîtin)!

6 Ma me erd (ji bo we) ranexistiye?!

7 Ma me çiya jî (di erdê de nekirine) sing?!

8 Ma me hûn cot û fer (mê û nêr) neafirandine?!

9 Ma me xewa we (ji bo we) ne kiriye bêhnberdan?!

10 Ma me şev (ji bo we) nekiriye cil (û star)?!

11 Ma me ro jî (ji bo jiyana we) ne kiriye çaxê kar?!

12 Ma me di ser we re heft qat (asîmanên) mikûm ava nekirine?!

13 Ma me (ji bo we) çirayeke geş û germ çênekiriye?!

14 Ma me (ji bo we) ji ewrên avbarkirî, baraneke pir nebarandiye?!

15 Ji bo em bi wê, tene û giya hêşîn bikin.

16 Baxçeyên têrdêlî (darên fêkî) derxin (û pê perwerde bikin).

17 Bêguman roja jihevcudakirinê (ya qenc û neqencan) li pêşiya her kesî ye, teqez dê bê.

18 Roja ku di sûrê de were pifkirin, vêca hûn dê pêl bi pêl bên ber Xwedayê Teala.

19 Wê rojê, asîman vedibin û dibin dergeh.

20 Çiya dihejin û dibin leylan (serab).

ترتيبها ٧٨ — سُورَةُ النَّبَإِ — آياتها ٤٠

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

عَمَّ يَتَسَآءَلُونَ ﴿١﴾ عَنِ ٱلنَّبَإِ ٱلْعَظِيمِ ﴿٢﴾ ٱلَّذِى هُمْ فِيهِ مُخْتَلِفُونَ ﴿٣﴾
كَلَّا سَيَعْلَمُونَ ﴿٤﴾ ثُمَّ كَلَّا سَيَعْلَمُونَ ﴿٥﴾ أَلَمْ نَجْعَلِ ٱلْأَرْضَ مِهَٰدًا ﴿٦﴾
وَٱلْجِبَالَ أَوْتَادًا ﴿٧﴾ وَخَلَقْنَٰكُمْ أَزْوَٰجًا ﴿٨﴾ وَجَعَلْنَا نَوْمَكُمْ سُبَاتًا
﴿٩﴾ وَجَعَلْنَا ٱلَّيْلَ لِبَاسًا ﴿١٠﴾ وَجَعَلْنَا ٱلنَّهَارَ مَعَاشًا ﴿١١﴾ وَبَنَيْنَا
فَوْقَكُمْ سَبْعًا شِدَادًا ﴿١٢﴾ وَجَعَلْنَا سِرَاجًا وَهَّاجًا ﴿١٣﴾ وَأَنزَلْنَا
مِنَ ٱلْمُعْصِرَٰتِ مَآءً ثَجَّاجًا ﴿١٤﴾ لِّنُخْرِجَ بِهِۦ حَبًّا وَنَبَاتًا ﴿١٥﴾ وَجَنَّٰتٍ
أَلْفَافًا ﴿١٦﴾ إِنَّ يَوْمَ ٱلْفَصْلِ كَانَ مِيقَٰتًا ﴿١٧﴾ يَوْمَ يُنفَخُ فِى ٱلصُّورِ
فَتَأْتُونَ أَفْوَاجًا ﴿١٨﴾ وَفُتِحَتِ ٱلسَّمَآءُ فَكَانَتْ أَبْوَٰبًا ﴿١٩﴾ وَسُيِّرَتِ
ٱلْجِبَالُ فَكَانَتْ سَرَابًا ﴿٢٠﴾ إِنَّ جَهَنَّمَ كَانَتْ مِرْصَادًا ﴿٢١﴾ لِّلطَّٰغِينَ
مَـَٔابًا ﴿٢٢﴾ لَّٰبِثِينَ فِيهَآ أَحْقَابًا ﴿٢٣﴾ لَّا يَذُوقُونَ فِيهَا بَرْدًا وَلَا شَرَابًا
﴿٢٤﴾ إِلَّا حَمِيمًا وَغَسَّاقًا ﴿٢٥﴾ جَزَآءً وِفَاقًا ﴿٢٦﴾ إِنَّهُمْ كَانُوا۟
لَا يَرْجُونَ حِسَابًا ﴿٢٧﴾ وَكَذَّبُوا۟ بِـَٔايَٰتِنَا كِذَّابًا ﴿٢٨﴾ وَكُلَّ شَىْءٍ
أَحْصَيْنَٰهُ كِتَٰبًا ﴿٢٩﴾ فَذُوقُوا۟ فَلَن نَّزِيدَكُمْ إِلَّا عَذَابًا ﴿٣٠﴾

21 Bi rastî wê rojê cehehem li hêviya bêbaweran e.

22 Domahîk û vehewîngeh e ji bo serxweveçûyan.

23 Ku her û her tê de dimînin.

24 Tê de, ne hênikatî û ne jî vexwarina sar naçêjin.

25 Ji bilî ava kelijî, kêm û zoxê pê ve (ew tiştekî dî tehm nakin).

26 Ev ceza li gorî kar û kiryarên wan e.

27 Bi rastî wan hesabê axretê hêvî nedikir (û wan bawer nedikir ku heye).

28 Wan bawerî bi ayetên me nedianî (û digotin ew derew in).

29 Me her tişt (yê ku însên kiriye) bi nivîsandinê qeyd kiriye.

30 (Gava ku biçin dojehê, ji wan re dê bê gotin:) Ezab biçêjin! Em ê ji ezabê we pê ve tiştekî din li we zêde nekin!

إِنَّ لِلْمُتَّقِينَ مَفَازًا ﴿٣١﴾ حَدَآئِقَ وَأَعْنَٰبًا ﴿٣٢﴾ وَكَوَاعِبَ أَتْرَابًا ﴿٣٣﴾ وَكَأْسًا
دِهَاقًا ﴿٣٤﴾ لَّا يَسْمَعُونَ فِيهَا لَغْوًا وَلَا كِذَّٰبًا ﴿٣٥﴾ جَزَآءً مِّن رَّبِّكَ عَطَآءً
حِسَابًا ﴿٣٦﴾ رَّبِّ ٱلسَّمَٰوَٰتِ وَٱلْأَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا ٱلرَّحْمَٰنِ لَا يَمْلِكُونَ
مِنْهُ خِطَابًا ﴿٣٧﴾ يَوْمَ يَقُومُ ٱلرُّوحُ وَٱلْمَلَٰٓئِكَةُ صَفًّا لَّا يَتَكَلَّمُونَ
إِلَّا مَنْ أَذِنَ لَهُ ٱلرَّحْمَٰنُ وَقَالَ صَوَابًا ﴿٣٨﴾ ذَٰلِكَ ٱلْيَوْمُ ٱلْحَقُّ فَمَن
شَآءَ ٱتَّخَذَ إِلَىٰ رَبِّهِۦ مَـَٔابًا ﴿٣٩﴾ إِنَّآ أَنذَرْنَٰكُمْ عَذَابًا قَرِيبًا يَوْمَ
يَنظُرُ ٱلْمَرْءُ مَا قَدَّمَتْ يَدَاهُ وَيَقُولُ ٱلْكَافِرُ يَٰلَيْتَنِى كُنتُ تُرَٰبًا ﴿٤٠﴾

ترتيبها ٧٩ — سُورَةُ النَّازِعَاتِ — آياتها ٤٦

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

وَٱلنَّٰزِعَٰتِ غَرْقًا ﴿١﴾ وَٱلنَّٰشِطَٰتِ نَشْطًا ﴿٢﴾ وَٱلسَّٰبِحَٰتِ سَبْحًا
﴿٣﴾ فَٱلسَّٰبِقَٰتِ سَبْقًا ﴿٤﴾ فَٱلْمُدَبِّرَٰتِ أَمْرًا ﴿٥﴾ يَوْمَ تَرْجُفُ ٱلرَّاجِفَةُ
﴿٦﴾ تَتْبَعُهَا ٱلرَّادِفَةُ ﴿٧﴾ قُلُوبٌ يَوْمَئِذٍ وَاجِفَةٌ ﴿٨﴾ أَبْصَٰرُهَا
خَٰشِعَةٌ ﴿٩﴾ يَقُولُونَ أَءِنَّا لَمَرْدُودُونَ فِى ٱلْحَافِرَةِ ﴿١٠﴾ أَءِذَا كُنَّا
عِظَٰمًا نَّخِرَةً ﴿١١﴾ قَالُوا۟ تِلْكَ إِذًا كَرَّةٌ خَاسِرَةٌ ﴿١٢﴾ فَإِنَّمَا هِىَ زَجْرَةٌ
وَٰحِدَةٌ ﴿١٣﴾ فَإِذَا هُم بِٱلسَّاهِرَةِ ﴿١٤﴾ هَلْ أَتَىٰكَ حَدِيثُ مُوسَىٰٓ ﴿١٥﴾

(31) Bêguman ji mutteqiyan re felat û serfirazî heye.
(32) Bostan û rezên tirî…
(33) Horiyên memikzebitî (nûderketî), hevsalî û yekdest…
(34) Kaseyên tijî mey (hene).
(35) Ew li bihiştê, ne kelevajiyekê ne jî li hemberî hev dereweke dibihîzin.
(36) Ew ji Xwedayê te mukafat û diyariyeke di cihê xwe de ye.
(37) Xwedayê erd û asîmanan û yên di navbera wan de Xwedayê dilovan e. (Wê rojê) tu kes nikare (ji bo rakirina ezab) pê re bipeyive.
(38) Roja ku ruh (li ser cesedan) hazir dibin û melayîket bi rêz sef digirin, ji bilî yê ku Xwedayê rehman destûra wî bide, kes nikare biaxive û ew ê rastiyê bibêje.
(39) Ha ew e roja heq. Piştî vê kî bivê dê riyekê bigire ku wî bigihîne Xwedayê wî.
(40) Bêguman me hûn ji ezabekî nêzîk hişyar kir. Ew roja ku her kes kar û kiryarên xwe dibîne û yê kafir dibêje: Xwezî ez ax û xwelî bûma (û dîsa sax nebûma)!

## SÛREYÊ NAZÎ'AT

Sûreyê Nazî'at çil û şeş (46) ayet e. Li Mekkê daketiye û navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva En-Nazî'at derbas bûye û bi ma'neya "canstînên bi dijwarî" ne.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

(1) Ez bi melayîketên canstîn ên ku bi dijwarî (rihên kafiran) dikişînin…
(2) Bi melayîketên canstîn ên ku bi merhemet (rihê mumînan) distînin…
(3) Bi melayîketên ku fermanên Xwedê bi lez tînin xwarê…
(4) Bi (firîşteyên ku di bicihanîna fermana Xwedê de) bi lez û bez, bi hev re pêşbaziyê dikin…
(5) Bi melayîketên ku kar û barekî bi rê ve dibin, sond be ku…
(6) Roja pifkirina pêşîn (her tiştî) dihejîne.
(7) Pifkirina duyem jî li pey wê tê.
(8) Wê rojê hin dil bitirs û lerzok in…
(9) Çavên wan melûl û perîşan in.
(10) (Digel ku heqîqet ev e jî) dibêjin: Ma piştî mirinê em ê li halê xwe yê pêşî (yê li dinyayê) bêne vegerandin?
(11) Ma gava ku em bibin hestiyên riziyayî û ji hev belav bibin jî (em ê sax bibin)?
(12) Wan (munkiran ji tinaz ve) gotin; vêca ew ji bo me dê bibe vegereke biziyan!
(13) Vêca belkî ew bes qîreke bitenê ye.
(14) Ha piştî wê qîrê di cih de însan dê xwe li ser erdê bibînin.
(15) Ma xebera (serpêhatiya) Mûsa ji te re hatiye ragihandin?

إِذْ نَادَىٰهُ رَبُّهُۥ بِٱلْوَادِ ٱلْمُقَدَّسِ طُوًى ﴿١٦﴾ ٱذْهَبْ إِلَىٰ فِرْعَوْنَ إِنَّهُۥ طَغَىٰ ﴿١٧﴾
فَقُلْ هَل لَّكَ إِلَىٰٓ أَن تَزَكَّىٰ ﴿١٨﴾ وَأَهْدِيَكَ إِلَىٰ رَبِّكَ فَتَخْشَىٰ ﴿١٩﴾ فَأَرَىٰهُ
ٱلْءَايَةَ ٱلْكُبْرَىٰ ﴿٢٠﴾ فَكَذَّبَ وَعَصَىٰ ﴿٢١﴾ ثُمَّ أَدْبَرَ يَسْعَىٰ ﴿٢٢﴾ فَحَشَرَ
فَنَادَىٰ ﴿٢٣﴾ فَقَالَ أَنَا۠ رَبُّكُمُ ٱلْأَعْلَىٰ ﴿٢٤﴾ فَأَخَذَهُ ٱللَّهُ نَكَالَ ٱلْءَاخِرَةِ وَٱلْأُولَىٰٓ
﴿٢٥﴾ إِنَّ فِى ذَٰلِكَ لَعِبْرَةً لِّمَن يَخْشَىٰٓ ﴿٢٦﴾ ءَأَنتُمْ أَشَدُّ خَلْقًا أَمِ ٱلسَّمَآءُ ۚ بَنَىٰهَا
﴿٢٧﴾ رَفَعَ سَمْكَهَا فَسَوَّىٰهَا ﴿٢٨﴾ وَأَغْطَشَ لَيْلَهَا وَأَخْرَجَ ضُحَىٰهَا ﴿٢٩﴾
وَٱلْأَرْضَ بَعْدَ ذَٰلِكَ دَحَىٰهَآ ﴿٣٠﴾ أَخْرَجَ مِنْهَا مَآءَهَا وَمَرْعَىٰهَا ﴿٣١﴾
وَٱلْجِبَالَ أَرْسَىٰهَا ﴿٣٢﴾ مَتَٰعًا لَّكُمْ وَلِأَنْعَٰمِكُمْ ﴿٣٣﴾ فَإِذَا جَآءَتِ ٱلطَّآمَّةُ
ٱلْكُبْرَىٰ ﴿٣٤﴾ يَوْمَ يَتَذَكَّرُ ٱلْإِنسَٰنُ مَا سَعَىٰ ﴿٣٥﴾ وَبُرِّزَتِ ٱلْجَحِيمُ
لِمَن يَرَىٰ ﴿٣٦﴾ فَأَمَّا مَن طَغَىٰ ﴿٣٧﴾ وَءَاثَرَ ٱلْحَيَوٰةَ ٱلدُّنْيَا ﴿٣٨﴾ فَإِنَّ ٱلْجَحِيمَ
هِىَ ٱلْمَأْوَىٰ ﴿٣٩﴾ وَأَمَّا مَنْ خَافَ مَقَامَ رَبِّهِۦ وَنَهَى ٱلنَّفْسَ عَنِ ٱلْهَوَىٰ
﴿٤٠﴾ فَإِنَّ ٱلْجَنَّةَ هِىَ ٱلْمَأْوَىٰ ﴿٤١﴾ يَسْـَٔلُونَكَ عَنِ ٱلسَّاعَةِ أَيَّانَ مُرْسَىٰهَا
﴿٤٢﴾ فِيمَ أَنتَ مِن ذِكْرَىٰهَآ ﴿٤٣﴾ إِلَىٰ رَبِّكَ مُنتَهَىٰهَآ ﴿٤٤﴾ إِنَّمَآ أَنتَ مُنذِرُ
مَن يَخْشَىٰهَا ﴿٤٥﴾ كَأَنَّهُمْ يَوْمَ يَرَوْنَهَا لَمْ يَلْبَثُوٓا۟ إِلَّا عَشِيَّةً أَوْ ضُحَىٰهَا ﴿٤٦﴾

## سُورَةُ عَبَسَ

ترتيبها ٨٠ — آياتها ٤٢

16 Wê dema ku Xwedayê wî li Newala Pîroz, li Tuwayê gazî wî kir (û jê re got:)

17 Here bal Firewn! Bi rastî ew (di zilmê de) pir ji ser xwe çûye.

18 Bibêje: Ma te divê li xwe biziviri û ji gunehan xwe paqij bikî?

19 Ez ê bi bal Rebbê te ve te rasterê bikim, vêca da ku tu jê bitirsî.

20 Di wê navê de Mûsa mucîzeya herî mezin nîşanî Firewn da (ku gopalê wî bû mar).

21 Firewn jê bawer nekir û bêemriya Xwedê kir.

22 Piştre Firewn pişt da heqiyê û karê fesadiyê kir.

23 Firewn xelk li xwe kom kir û bang hildêra…

24 Ji wan re got: Ez Xwedayê we yê herî bilind im (di ser min re tu xweda nîn in)!

25 Ellah Teala jî ew bi ezabê axiret û dinyayê ceza kir.

26 Bêguman di vê (serpêhatiya Firewn) de ji bo kesê ku ji Xwedê bitirse, îbret heye.

27 (Gelî munkiran!) Erê ma saxkirina we ya piştî mirinê zehmettir e yan çêkirina asîmanan? Digel ku Xwedê asîman çêkiriye.

28 (Xwedê) cirm û şekilê wî (bêstûn) bilind kir), vêca bi hostayî ew sererast û têkûz kir.

29 Şeva wî tarî kir û roja wî ronî kiriye.

30 Piştî hingê erd (bi awayê hêkê ji bo jiyanê) rast û xweş kir.

31 Ji erdê, ava wê û çêreya wê derxist.

32 Çiya jî (tê de) mikûm û qehîm kirin (da ku neheje).

33 Da ku hûn hemû bi terşên (deve, dewar û pezê) xwe ve jê feydê wergirin.

34 Vêca gava ew karesata (qiyameta) mezintirîn hat…

35 Wê rojê însan dê ya ku kiriye di bîra xwe bîne.

36 Cehenem ji yên ku dibînin re (çi mumîn çi kafir) diyar dibe.

37 Vêca ew ê ku (bi kafirbûnê) zêdeyî xwe çûbe…

38 Jiyara dinyayê di ser (nîmetên) axiretê re girtibe…

39 Bêguman dojeh vehewîngeha wî ye.

40 Herçî ku ji mezinahî û rabûna ber (destê) Xwedayê xwe tirsiyabe û nefsa xwe ji hewesên wê (yên xerab) dabe paş…

41 Bêşik vehewîngeha wî cenet e.

42 (Ya Muhemmed!) Ew, pirsa qiyametê ji te dikin ka kengê dê rabe?

43 Ma tu çi jê dizanî heta ku pirsa wê ji te dikin!

44 Bi rastî domahîka dinyayê û hatina qiyametê bes Xwedayê te dizane.

45 Bes tu wî kesê ku ji qiyametê ditirse, hişyar dikî.

46 Roja ku ew qiyametê dibînin, hizir dikin ku ew ji êvarê yan jî ji danê sibehê pêvetir (li dinyayê) nemane.

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

عَبَسَ وَتَوَلّٰىٓ ﴿١﴾ أَنْ جَآءَهُ الْأَعْمٰى ﴿٢﴾ وَمَا يُدْرِيكَ لَعَلَّهُ يَزَّكّٰىٓ ﴿٣﴾ أَوْ
يَذَّكَّرُ فَتَنْفَعَهُ الذِّكْرٰىٓ ﴿٤﴾ أَمَّا مَنِ اسْتَغْنٰى ﴿٥﴾ فَأَنْتَ لَهُ تَصَدّٰى ﴿٦﴾
وَمَا عَلَيْكَ أَلَّا يَزَّكّٰى ﴿٧﴾ وَأَمَّا مَنْ جَآءَكَ يَسْعٰى ﴿٨﴾ وَهُوَ يَخْشٰى ﴿٩﴾ فَأَنْتَ
عَنْهُ تَلَهّٰى ﴿١٠﴾ كَلَّآ إِنَّهَا تَذْكِرَةٌ ﴿١١﴾ فَمَنْ شَآءَ ذَكَرَهُ ﴿١٢﴾ فِي صُحُفٍ مُكَرَّمَةٍ
﴿١٣﴾ مَرْفُوعَةٍ مُطَهَّرَةٍ ﴿١٤﴾ بِأَيْدِي سَفَرَةٍ ﴿١٥﴾ كِرَامٍ بَرَرَةٍ ﴿١٦﴾ قُتِلَ الْإِنْسَانُ
مَآ أَكْفَرَهُ ﴿١٧﴾ مِنْ أَيِّ شَيْءٍ خَلَقَهُ ﴿١٨﴾ مِنْ نُطْفَةٍ خَلَقَهُ فَقَدَّرَهُ ﴿١٩﴾ ثُمَّ
السَّبِيلَ يَسَّرَهُ ﴿٢٠﴾ ثُمَّ أَمَاتَهُ فَأَقْبَرَهُ ﴿٢١﴾ ثُمَّ إِذَا شَآءَ أَنْشَرَهُ ﴿٢٢﴾ كَلَّا لَمَّا
يَقْضِ مَآ أَمَرَهُ ﴿٢٣﴾ فَلْيَنْظُرِ الْإِنْسَانُ إِلٰى طَعَامِهِ ﴿٢٤﴾ أَنَّا صَبَبْنَا الْمَآءَ صَبًّا
﴿٢٥﴾ ثُمَّ شَقَقْنَا الْأَرْضَ شَقًّا ﴿٢٦﴾ فَأَنْبَتْنَا فِيهَا حَبًّا ﴿٢٧﴾ وَعِنَبًا وَقَضْبًا ﴿٢٨﴾
وَزَيْتُونًا وَنَخْلًا ﴿٢٩﴾ وَحَدَآئِقَ غُلْبًا ﴿٣٠﴾ وَفَاكِهَةً وَأَبًّا ﴿٣١﴾ مَتَاعًا لَكُمْ
وَلِأَنْعَامِكُمْ ﴿٣٢﴾ فَإِذَا جَآءَتِ الصَّآخَّةُ ﴿٣٣﴾ يَوْمَ يَفِرُّ الْمَرْءُ مِنْ أَخِيهِ ﴿٣٤﴾
وَأُمِّهِ وَأَبِيهِ ﴿٣٥﴾ وَصَاحِبَتِهِ وَبَنِيهِ ﴿٣٦﴾ لِكُلِّ امْرِئٍ مِنْهُمْ يَوْمَئِذٍ شَأْنٌ
يُغْنِيهِ ﴿٣٧﴾ وُجُوهٌ يَوْمَئِذٍ مُسْفِرَةٌ ﴿٣٨﴾ ضَاحِكَةٌ مُسْتَبْشِرَةٌ ﴿٣٩﴾ وَوُجُوهٌ
يَوْمَئِذٍ عَلَيْهَا غَبَرَةٌ ﴿٤٠﴾ تَرْهَقُهَا قَتَرَةٌ ﴿٤١﴾ أُولٰٓئِكَ هُمُ الْكَفَرَةُ الْفَجَرَةُ ﴿٤٢﴾

# SÛREYÊ EBESE

Sûreyê Ebese çil û du (42) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva Ebese derbas bûye û bi ma'neya "rûyê xwe tirş kiriye" ye.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

(1) Pêxamber rûyê xwe tirş kir û berê xwe jê guherand.
(2) Dema yê kor hate cem.
(3) Ma tu çi dizanî ka halê wî çî ye? Dibe ku ew xwe (ji gunehan) paqij bike.
(4) Yan jî ew şîretê wergire, vêca ew şîret feydê bide wî!
(5) Herçî ew ê ku xwe ne hewce dîtiye…
(6) Tu pê ve dimînî û wî bernadî.
(7) Eger ew bawerî neyîne tu jê ne berpirs î, bes a te ragihandin e.
(8) Lê belê ew kesê ku ji dil tê cem te…
(9) Ji Xwedê jî ditirse…
(10) Tu wî ji bîr dikî (û bi yê dî ve dimînî).
(11) Nexêr (careke din wisa meke)! Bi rastî ev (Quran) şîret e.
(12) Vêca kî bixwaze dê (guhdarî bike û jê) şîret bigire.
(13) Ew di rûpelên pîroz de ne.
(14) Ew rûpel bilind, xwedanrêz û paqij in.
(15) Ew bi destê firîşteyên ku di navbera pêxemberan de qasid in, hatiye nivîsandin.
(16) Ên birûmet û îtaetkar.
(17) Lenet li mirovê kafir be, ma çiqas ew nankor û jirêderketî ye.
(18) Xwedê, ma ew ji çi (tiştî) afirandiye?
(19) Ew ji dilopek menî (mêranî) afirandiye û şekil û dirûv dayê.
(20) Piştre, rê jê re sehil kiriye (ku bi hêsanî ji dayika xwe bibe û sedemên dînî û dinyawî jê re hêsan kirine).
(21) Piştre, ew mirandiye û di gorê de ew veşartiye.
(22) Piştre, gava ku Xwedê bixwaze (di çaxê ku ew bivê de) dê wî sax bike.
(23) Nexêr! Însan hê jî tiştê ku Xwedê emrê wî (pê) kiriye, neaniye cih.
(24) Bila însan li xwarina xwe binêre!
(25) Me av ji ewran barand.
(26) Piştre me erd bi şînkatiyê qelaşt.
(27) Me lib û tene jê derxist.
(28) Tirî û zerzewat jî.
(29) Zeytûn û xurme jî.
(30) Dehlên (bostanên) têrdêlî jî.
(31) Fêkî û mêrg jî.
(32) Ji bo ku ji we û terşên we re bibe aborî û çêre.
(33) Vêca gava qîrîna (qiyametê ya ku mirovan ji guhan dike) hat…
(34) Roja ku mirov ji birayê xwe…
(35) Ji dayik û bavê xwe…
(36) Ji heval (jin) û zarokên xwe, direve.
(37) Wê rojê, ji her yekî ji wan re halekî (û derdekî) wî heye ku wî meşxûl bike.
(38) Wê rojê, hin rû hene ku geş in.
(39) Devliken û kêfxweş in.
(40) Wê rojê, hin rû jî hene ku toz (a zilet û suckariyê) ew girtine.
(41) Reşatiyê ew nixumandine.
(42) Ha ew in kafirên gunehkar.

# SÛREYÊ TEKWÎR

Sûreyê Tekwîr, bîst û neh (29) ayet e. Li Mekkê daketiye û navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva Kuwwîret derbas bûye û bi ma’neya “pêçan” e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Dema roj tê pêçan (û tarî dibe).
2 Dema stêr reş bibin û bikevin.
3 Dema çiya bêne hejandin, hûrhûr û berba bibin.
4 Dema deveyên avis bêne avêtin û bêxwedî bimînin.
5 Dema (heywanên) kovî li hev bêne civandin.
6 Dema derya bêne sincirandin û furandin…
7 Dema can û beden bigihin hev.
8 Dema ji keça ku bi saxî hatiye veşartin, bê pirskirin:
9 Ka ew "ji bo çi sûcî hatiye kuştin?"
10 Dema ku defterên emelan bêne belavkirin.
11 Dema ku asîman ji cihê xwe diçin.
12 Dema ku cehenem tê pêxistin (û dadan).
13 Gava ku cenet (ji bo xwedênasan) bê nêzîkkirin.
14 (Wê çaxê) Her kes dê bizane ka çi ji bo xwe amade kiriye û çi aniye (axiretê).
15 Nexêr! Sond bi wan stêrên ku bi şev xuya û bi roj winda …
16 Ew ên ku di rêgeha xwe de digerin û bi şev diçirisin.
17 Sond bi şevê, dema (bi tarîtiya xwe) ronahiyê radike.
18 Bi sibehê, dema bi ronahiya xwe ve tê.
19 Bi rastî ev Quran qasidekî birêz û birûmet ew aniye.
20 Ew qasid xwedanhêz e, li cem Xwedanê Erş xwedî cih û qedirbilind e.

سُورَةُ التَّكْوِيرِ — آياتها ٢٩ — ترتيبها ٨١

بِسۡمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحۡمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

إِذَا ٱلشَّمۡسُ كُوِّرَتۡ ﴿١﴾ وَإِذَا ٱلنُّجُومُ ٱنكَدَرَتۡ ﴿٢﴾ وَإِذَا ٱلۡجِبَالُ
سُيِّرَتۡ ﴿٣﴾ وَإِذَا ٱلۡعِشَارُ عُطِّلَتۡ ﴿٤﴾ وَإِذَا ٱلۡوُحُوشُ حُشِرَتۡ
﴿٥﴾ وَإِذَا ٱلۡبِحَارُ سُجِّرَتۡ ﴿٦﴾ وَإِذَا ٱلنُّفُوسُ زُوِّجَتۡ ﴿٧﴾ وَإِذَا
ٱلۡمَوۡءُۥدَةُ سُئِلَتۡ ﴿٨﴾ بِأَيِّ ذَنۢبٖ قُتِلَتۡ ﴿٩﴾ وَإِذَا ٱلصُّحُفُ نُشِرَتۡ
﴿١٠﴾ وَإِذَا ٱلسَّمَآءُ كُشِطَتۡ ﴿١١﴾ وَإِذَا ٱلۡجَحِيمُ سُعِّرَتۡ ﴿١٢﴾ وَإِذَا ٱلۡجَنَّةُ
أُزۡلِفَتۡ ﴿١٣﴾ عَلِمَتۡ نَفۡسٞ مَّآ أَحۡضَرَتۡ ﴿١٤﴾ فَلَآ أُقۡسِمُ بِٱلۡخُنَّسِ ﴿١٥﴾
ٱلۡجَوَارِ ٱلۡكُنَّسِ ﴿١٦﴾ وَٱلَّيۡلِ إِذَا عَسۡعَسَ ﴿١٧﴾ وَٱلصُّبۡحِ إِذَا تَنَفَّسَ ﴿١٨﴾
إِنَّهُۥ لَقَوۡلُ رَسُولٖ كَرِيمٖ ﴿١٩﴾ ذِي قُوَّةٍ عِندَ ذِي ٱلۡعَرۡشِ مَكِينٖ ﴿٢٠﴾ مُّطَاعٖ
ثَمَّ أَمِينٖ ﴿٢١﴾ وَمَا صَاحِبُكُم بِمَجۡنُونٖ ﴿٢٢﴾ وَلَقَدۡ رَءَاهُ بِٱلۡأُفُقِ ٱلۡمُبِينِ
﴿٢٣﴾ وَمَا هُوَ عَلَى ٱلۡغَيۡبِ بِضَنِينٖ ﴿٢٤﴾ وَمَا هُوَ بِقَوۡلِ شَيۡطَٰنٖ رَّجِيمٖ ﴿٢٥﴾
فَأَيۡنَ تَذۡهَبُونَ ﴿٢٦﴾ إِنۡ هُوَ إِلَّا ذِكۡرٞ لِّلۡعَٰلَمِينَ ﴿٢٧﴾ لِمَن شَآءَ مِنكُمۡ أَن
يَسۡتَقِيمَ ﴿٢٨﴾ وَمَا تَشَآءُونَ إِلَّآ أَن يَشَآءَ ٱللَّهُ رَبُّ ٱلۡعَٰلَمِينَ ﴿٢٩﴾

سُورَةُ الانفِطَارِ — آياتها ١٩ — ترتيبها ٨٢

21 Melayîket jê re guhdar in, li cem xwedê emîn e.
22 Nexwe hevalê we (Muhemmed ê ku bi esl û bavik hûn wî nas dikin) ne dîn e.
23 Sond be, Muhemmed Cibraîl li asoyê diyar û aşkera (di şeklê wî yê eslî de) dîtiye.
24 Muhemmed der barê wehyê de ne zexel e (û ne bexîl e).
25 Quran ne gotina şeytanekî qewitî ye.
26 Nexwe hûn bi ku ve diçin!
27 Quran ji mirovan re her şîret û ronahî ye.
28 Ji bo her kesî ye, ew ê ku bixwaze xwe rast û durist bike (li pey heqiyê biçe).
29 Hûn nikarin riya rast ji Quranê bigirin eger ku arîkariya Xwedayê alemê nebe.

بِسْمِ اللَّهِ الرَّحْمَٰنِ الرَّحِيمِ

إِذَا السَّمَاءُ انفَطَرَتْ (١) وَإِذَا الْكَوَاكِبُ انتَثَرَتْ (٢) وَإِذَا الْبِحَارُ
فُجِّرَتْ (٣) وَإِذَا الْقُبُورُ بُعْثِرَتْ (٤) عَلِمَتْ نَفْسٌ مَّا قَدَّمَتْ
وَأَخَّرَتْ (٥) يَا أَيُّهَا الْإِنسَانُ مَا غَرَّكَ بِرَبِّكَ الْكَرِيمِ (٦) الَّذِي
خَلَقَكَ فَسَوَّاكَ فَعَدَلَكَ (٧) فِي أَيِّ صُورَةٍ مَّا شَاءَ رَكَّبَكَ (٨)
كَلَّا بَلْ تُكَذِّبُونَ بِالدِّينِ (٩) وَإِنَّ عَلَيْكُمْ لَحَافِظِينَ (١٠) كِرَامًا
كَاتِبِينَ (١١) يَعْلَمُونَ مَا تَفْعَلُونَ (١٢) إِنَّ الْأَبْرَارَ لَفِي نَعِيمٍ (١٣) وَإِنَّ
الْفُجَّارَ لَفِي جَحِيمٍ (١٤) يَصْلَوْنَهَا يَوْمَ الدِّينِ (١٥) وَمَا هُمْ عَنْهَا بِغَائِبِينَ
(١٦) وَمَا أَدْرَاكَ مَا يَوْمُ الدِّينِ (١٧) ثُمَّ مَا أَدْرَاكَ مَا يَوْمُ الدِّينِ
(١٨) يَوْمَ لَا تَمْلِكُ نَفْسٌ لِّنَفْسٍ شَيْئًا ۖ وَالْأَمْرُ يَوْمَئِذٍ لِّلَّهِ (١٩)

ترتيبها ٨٣ — سُورَةُ المُطَفِّفِينَ — آياتها ٣٦

بِسْمِ اللَّهِ الرَّحْمَٰنِ الرَّحِيمِ

وَيْلٌ لِّلْمُطَفِّفِينَ (١) الَّذِينَ إِذَا اكْتَالُوا عَلَى النَّاسِ يَسْتَوْفُونَ (٢)
وَإِذَا كَالُوهُمْ أَو وَّزَنُوهُمْ يُخْسِرُونَ (٣) أَلَا يَظُنُّ أُولَٰئِكَ أَنَّهُم
مَّبْعُوثُونَ (٤) لِيَوْمٍ عَظِيمٍ (٥) يَوْمَ يَقُومُ النَّاسُ لِرَبِّ الْعَالَمِينَ (٦)

## SÛREYÊ INFÎTAR

Sûreyê Infitar nozdeh (19) ayet e û li Mekkê daketiye. Navê sûre ji ayeta pêşîn hatiye ku tê de peyva Infitar derbas bûye û ma'neya wê "terikîn û derizîn" e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn.**

1 Dema ku asîman biterike (û bibe du şeq)…

2 Dema ku stêr bikevin (û birijin)…

3 Dema ku derya biteqin û têkilî hev bibin…

4 Dema ku gor serûbinî hev bibin (û mirî ji wan derkevin)…

5 Hingê her kes dê bizane ka çi li pêşiya xwe şandiye û çi li dûv xwe hiştiye.

6 Hey Mirov! Çi tiştî tu li hemberî Xwedayê te yê xwedankerem xapandiye (ku tu riya wî de naçî)?

7 Ew Xwedayê ku bêkêmasî, rast û durist tu çêkirî.

8 Di kîjan awayî de xwestiye (wisa) tu aniye ber hev.

9 Nexêr (bi kerema Xwedê nexape)! Bi rastî hûn (ji rikdarî) bi roja ceza bawerî nayînin.

10 Bi rastî hin melayîket li ser nivisîna kar kiryarên we zêrevan in.

11 Ew melayîketên xwedanrêz û birûmet in, her tiştê hûn dikin dinivîsin.

12 Ew, a ku hûn dikin dizanin û dinivîsin.

13 Bi rastî mirovên çak û xwedênas di nava nîmetan de ne.

14 Bêguman neqenc jî di nava dojehê de ne.

15 Ew, roja ceza dikevin cehenemê.

16 Bi tu riyekê jê rizgar nabin û nikarin jê birevin.

17 Ma tu dizanî ku roja ceza çi ye?

18 Dîsa ma tu dizanî ku roja ceza çi ye?

19 (Roja ceza) Ew roj e ku tu kes nikare ji tu kesî re tiştekî bike. Wê rojê ferman her a Xwedayê mezin e.

## SÛREYÊ MUTTEFFIFÎN

Sûreyê Mutteffifîn sî û şeş (36) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva Muteffifîn derbas bûye û bi vê mehneyê ye "yên ku di kêşîn û pîvanê de hîle û sextekariyê dikin."

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Hey wax li halê wan terazîdiz û pîvandizan…

2 Ew ên ku dema ji xelkê bi pîvan û kêşan werdigirin bi temamî werdigirin…

3 Dema bi kêşan û pîvan difiroşin kêm dipîvin û kêm dikêşin.

4 Ma yeqîn nakin ku ew piştî mirinê (ji bo hesabê kirinên xwe) dê bi rastî bêne vejandin?

5 Ji bo rojeke bitirs û sehw (ku roja qiyametê ye).

6 Roja ku hemû mirov li ber Xwedayê alemê û fermana wî radiwestin.

كَلَّآ إِنَّ كِتَٰبَ ٱلْفُجَّارِ لَفِى سِجِّينٍ ٧ وَمَآ أَدْرَىٰكَ مَا سِجِّينٌ ٨ كِتَٰبٌ
مَّرْقُومٌ ٩ وَيْلٌ يَوْمَئِذٍ لِّلْمُكَذِّبِينَ ١٠ ٱلَّذِينَ يُكَذِّبُونَ بِيَوْمِ ٱلدِّينِ ١١
وَمَا يُكَذِّبُ بِهِۦٓ إِلَّا كُلُّ مُعْتَدٍ أَثِيمٍ ١٢ إِذَا تُتْلَىٰ عَلَيْهِ ءَايَٰتُنَا قَالَ أَسَٰطِيرُ
ٱلْأَوَّلِينَ ١٣ كَلَّا ۖ بَلْ ۜ رَانَ عَلَىٰ قُلُوبِهِم مَّا كَانُوا۟ يَكْسِبُونَ ١٤ كَلَّآ إِنَّهُمْ
عَن رَّبِّهِمْ يَوْمَئِذٍ لَّمَحْجُوبُونَ ١٥ ثُمَّ إِنَّهُمْ لَصَالُوا۟ ٱلْجَحِيمِ ١٦ ثُمَّ يُقَالُ
هَٰذَا ٱلَّذِى كُنتُم بِهِۦ تُكَذِّبُونَ ١٧ كَلَّآ إِنَّ كِتَٰبَ ٱلْأَبْرَارِ لَفِى عِلِّيِّينَ
١٨ وَمَآ أَدْرَىٰكَ مَا عِلِّيُّونَ ١٩ كِتَٰبٌ مَّرْقُومٌ ٢٠ يَشْهَدُهُ ٱلْمُقَرَّبُونَ
٢١ إِنَّ ٱلْأَبْرَارَ لَفِى نَعِيمٍ ٢٢ عَلَى ٱلْأَرَآئِكِ يَنظُرُونَ ٢٣ تَعْرِفُ فِى
وُجُوهِهِمْ نَضْرَةَ ٱلنَّعِيمِ ٢٤ يُسْقَوْنَ مِن رَّحِيقٍ مَّخْتُومٍ ٢٥
خِتَٰمُهُۥ مِسْكٌ ۚ وَفِى ذَٰلِكَ فَلْيَتَنَافَسِ ٱلْمُتَنَٰفِسُونَ ٢٦ وَمِزَاجُهُۥ
مِن تَسْنِيمٍ ٢٧ عَيْنًا يَشْرَبُ بِهَا ٱلْمُقَرَّبُونَ ٢٨ إِنَّ ٱلَّذِينَ
أَجْرَمُوا۟ كَانُوا۟ مِنَ ٱلَّذِينَ ءَامَنُوا۟ يَضْحَكُونَ ٢٩ وَإِذَا مَرُّوا۟ بِهِمْ
يَتَغَامَزُونَ ٣٠ وَإِذَا ٱنقَلَبُوٓا۟ إِلَىٰٓ أَهْلِهِمُ ٱنقَلَبُوا۟ فَكِهِينَ ٣١
وَإِذَا رَأَوْهُمْ قَالُوٓا۟ إِنَّ هَٰٓؤُلَآءِ لَضَآلُّونَ ٣٢ وَمَآ أُرْسِلُوا۟ عَلَيْهِمْ
حَٰفِظِينَ ٣٣ فَٱلْيَوْمَ ٱلَّذِينَ ءَامَنُوا۟ مِنَ ٱلْكُفَّارِ يَضْحَكُونَ ٣٤

7 Nexêr, wisa nekin! Bi rastî deftera emelê bedkar û gunehkaran di siccinê de ye.

8 Ma tu dizanî ka siccîn (tomara dojehiyan) çi ye?

9 Ew, deftereke bi nav û nîşan e.

10 Wê rojê, wax li halê bêbawer û bedkaran!

11 Ew ên ku bi roja cezadanê bawerî nayînin.

12 Her ê sitemkar û gunehkar bi roja cezadanê bawerî neyîne.

13 Ew ê ku gava ayetên me jê re tên xwendin, dibêje ev "çîrok û çîvanokên pêşiyan e."

14 Nexêr, ne wisan e! Belkî xerabî û gunehên wan, dilên wan perde (û reş) kiriye.

15 Nexêr, bi rastî wê rojê ew ji (dîtina cemala) Xwedayê xwe bêpar (û mehrûm) in.

16 Paşê, ew ê herin dojehê.

17 Paşê melayîket û dergehvan ji wan re dibêjin: Ha ev e, ew (ezabê) ku we pê bawerî nedikir.

18 Nexêr, bi rastî deftera kirinên xweşmirov û qencan di ‘Îlliyînê’ de ye.

19 Ma tu dizanî ka Îlliyîn çi ye?

20 Ew deftereke bi nav û nîşan e.

21 Melayîketên nêzîkî Xwedê (yên birêz û birûmet) dê wê defterê amade bikin û şahdeyiyê jê re bidin.

22 Bi rastî qenc, di (nava) nîmet (ên cenetê) de ne.

23 Ew (li bihiştê) li ser textên çarçovekirî, li xêra ku Xwedê ji bo wan berhevkiriye temaşe dikin.

24 Tu di rûyên wan de xweşiya nîmetan dibînî.

25 Ew ji meyeke safî ya devgirtî têne avdayîn.

26 Domahiya vexwarina wê tehma miskê dide. Ha di vê (nîmeta daimî) de bila tenê pêşbaz pêşbaziyê bikin.

27 Ya tevlî wê meye dibe ava tesnîmê ye (li bihiştê kaniyeke zêde biqedir e).

28 Tesnîm kaniyeke wisan e ku yên nêzîkên Xwedê (xweşmirov) jê vedixwin.

29 Bi rastî li dinyayê sûcker, bi bawermendan dikenin.

30 Gava ku bawermend di ber wan re derbas dibûn, ji hev re bi çavan ew nîşan didan (û tinaz bi wan dikirin).

31 Dema vedigeriyan mala xwe ji bo xwe dikirin tinazok û di sohbetê xwe de zewq jê didîtin.

32 Dema ku kafiran bawermend didîtin, digotin: Bi rastî evên ha jirêderketî ne.

33 Hal ev e ku kafir, li ser bawermendan nehatine şandin da ku zêrevaniyê li ser wan bikin.

34 Ha îro (roja qiyametê) bawermend bi kafiran dikenin.

عَلَى ٱلْأَرَآئِكِ يَنظُرُونَ ﴿٣٥﴾ هَلْ ثُوِّبَ ٱلْكُفَّارُ مَا كَانُوا۟ يَفْعَلُونَ ﴿٣٦﴾

ترتيبها ٨٤ — سُورَةُ الانشِقَاق — آياتها ٢٥

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

إِذَا ٱلسَّمَآءُ ٱنشَقَّتْ ﴿١﴾ وَأَذِنَتْ لِرَبِّهَا وَحُقَّتْ ﴿٢﴾ وَإِذَا ٱلْأَرْضُ مُدَّتْ
﴿٣﴾ وَأَلْقَتْ مَا فِيهَا وَتَخَلَّتْ ﴿٤﴾ وَأَذِنَتْ لِرَبِّهَا وَحُقَّتْ ﴿٥﴾ يَٰٓأَيُّهَا
ٱلْإِنسَٰنُ إِنَّكَ كَادِحٌ إِلَىٰ رَبِّكَ كَدْحًا فَمُلَٰقِيهِ ﴿٦﴾ فَأَمَّا مَنْ أُوتِىَ
كِتَٰبَهُۥ بِيَمِينِهِۦ ﴿٧﴾ فَسَوْفَ يُحَاسَبُ حِسَابًا يَسِيرًا ﴿٨﴾ وَيَنقَلِبُ
إِلَىٰٓ أَهْلِهِۦ مَسْرُورًا ﴿٩﴾ وَأَمَّا مَنْ أُوتِىَ كِتَٰبَهُۥ وَرَآءَ ظَهْرِهِۦ ﴿١٠﴾ فَسَوْفَ
يَدْعُوا۟ ثُبُورًا ﴿١١﴾ وَيَصْلَىٰ سَعِيرًا ﴿١٢﴾ إِنَّهُۥ كَانَ فِىٓ أَهْلِهِۦ مَسْرُورًا ﴿١٣﴾
إِنَّهُۥ ظَنَّ أَن لَّن يَحُورَ ﴿١٤﴾ بَلَىٰٓ إِنَّ رَبَّهُۥ كَانَ بِهِۦ بَصِيرًا ﴿١٥﴾ فَلَآ أُقْسِمُ
بِٱلشَّفَقِ ﴿١٦﴾ وَٱلَّيْلِ وَمَا وَسَقَ ﴿١٧﴾ وَٱلْقَمَرِ إِذَا ٱتَّسَقَ ﴿١٨﴾
لَتَرْكَبُنَّ طَبَقًا عَن طَبَقٍ ﴿١٩﴾ فَمَا لَهُمْ لَا يُؤْمِنُونَ ﴿٢٠﴾ وَإِذَا قُرِئَ
عَلَيْهِمُ ٱلْقُرْءَانُ لَا يَسْجُدُونَ ۩ ﴿٢١﴾ بَلِ ٱلَّذِينَ كَفَرُوا۟ يُكَذِّبُونَ
﴿٢٢﴾ وَٱللَّهُ أَعْلَمُ بِمَا يُوعُونَ ﴿٢٣﴾ فَبَشِّرْهُم بِعَذَابٍ أَلِيمٍ ﴿٢٤﴾
إِلَّا ٱلَّذِينَ ءَامَنُوا۟ وَعَمِلُوا۟ ٱلصَّٰلِحَٰتِ لَهُمْ أَجْرٌ غَيْرُ مَمْنُونٍ ﴿٢٥﴾

35 Bawermend li ser textan (li qenciyên ku Xwedê dane wan) temaşe dikin.

36 Erê ma gelo kafiran cezayê kirinên xwe ne dîtin?

## SÛREYÊ INŞIQAQ

Sûreyê Inşiqaq bîst û pênc (25) ayet e. Li Mekkê daketiye. Navê sûre ji ayeta pêşîn hatiye ku tê de peyva Inşeqqet derbas bûye û bi ma'neya “terk û derz” e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Dema ku asîman biterike (û biqelişe)…

2 Guhdariya fermana Xwedayê xwe kir ku ew biqelişe û heq bû ke ew guhdariya fermana Xwedê bike.

3 Dema ku erd dirêj û rast (û mişt) bibe û…

4 Yên ku di nav xwe de biavêje û xwe vala bike.

5 Her wiha gava erd li fermana Rebbê xwe guhdarî kir û pêdivî bû ku ew guhdariya fermana Xwedê bike.

6 Hey însan! Bi rastî tu bi bal Xwedayê xwe ve bi cehd û xebatê, xwe diwestînî, vêca tu yê bigihîjî xebata xwe.

7 Herçî ku kitêba kirinên wî ji rexê wî yê rastê ve bê dayîn…

8 Ew dê hesabekî sehl û hêsan bibîne.

9 Ew ê bi kêfxweşî li malbata xwe vegere.

10 Herçî ku kitêba kirinên wî ji pişt wî ve were dayîn…

11 Ew ê di cih de mirinê bixwaze.

12 Dê bikeve agirê bipêt.

13 Bi rastî ew di nav kes û kûsên xwe de dilxweş û şad bû.

14 Bi rastî ji wî we ye ku ew dê neçe ber destê Xwedayê xwe.

15 Ne wisan e. Teqez Xwedayê wî li ser hemû kar û kiryarên wî agahdar e.

16 Sond bi soratiya rojavabûnê…

17 Bi şevê û ya ku di xwe de berhev kiriye…

18 Bi heyva çardeh şevî, ku…

19 Hûn (gelî mirovan!) dê ji rewşekî bikevin rewşeke din.

20 Ma çi ji wan bûye ku ew bawerî nayînin?

21 Dema Quran ji wan re tê xwendin guhdarî nakin û naçin sicûdê?

22 Lê belê ew ên ku kafir bûne bi Quranê bawerî nayînin.

23 Hal ev e Xwedê bi ya ku ew di dilê xwe de vedişêrin, bêhtir dizane.

24 Mizgîniya ezabekî dijwar bide wan!

25 Lê belê ew ên ku bawerî anî û karên qenc kirin, ji wan re perûyeke ku nayê birîn heye.

# SÛREYÊ BURÛC

Sûreyê Burûc bîst û du (22) ayet e û li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva Burûc bihuriye û bi ma’neya “bircan û çerxan” e.

آياتها ٢٢ — سُورَةُ الْبُرُوجِ — ترتيبها ٨٥

بِسْمِ اللَّهِ الرَّحْمَٰنِ الرَّحِيمِ

وَالسَّمَاءِ ذَاتِ الْبُرُوجِ ﴿١﴾ وَالْيَوْمِ الْمَوْعُودِ ﴿٢﴾ وَشَاهِدٍ وَمَشْهُودٍ
﴿٣﴾ قُتِلَ أَصْحَابُ الْأُخْدُودِ ﴿٤﴾ النَّارِ ذَاتِ الْوَقُودِ ﴿٥﴾ إِذْ هُمْ عَلَيْهَا
قُعُودٌ ﴿٦﴾ وَهُمْ عَلَىٰ مَا يَفْعَلُونَ بِالْمُؤْمِنِينَ شُهُودٌ ﴿٧﴾ وَمَا نَقَمُوا
مِنْهُمْ إِلَّا أَن يُؤْمِنُوا بِاللَّهِ الْعَزِيزِ الْحَمِيدِ ﴿٨﴾ الَّذِي لَهُ مُلْكُ
السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ وَاللَّهُ عَلَىٰ كُلِّ شَيْءٍ شَهِيدٌ ﴿٩﴾ إِنَّ الَّذِينَ
فَتَنُوا الْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ ثُمَّ لَمْ يَتُوبُوا فَلَهُمْ عَذَابُ جَهَنَّمَ وَلَهُمْ
عَذَابُ الْحَرِيقِ ﴿١٠﴾ إِنَّ الَّذِينَ آمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ لَهُمْ
جَنَّاتٌ تَجْرِي مِن تَحْتِهَا الْأَنْهَارُ ذَٰلِكَ الْفَوْزُ الْكَبِيرُ ﴿١١﴾ إِنَّ بَطْشَ
رَبِّكَ لَشَدِيدٌ ﴿١٢﴾ إِنَّهُ هُوَ يُبْدِئُ وَيُعِيدُ ﴿١٣﴾ وَهُوَ الْغَفُورُ الْوَدُودُ ﴿١٤﴾
ذُو الْعَرْشِ الْمَجِيدُ ﴿١٥﴾ فَعَّالٌ لِّمَا يُرِيدُ ﴿١٦﴾ هَلْ أَتَاكَ حَدِيثُ الْجُنُودِ
﴿١٧﴾ فِرْعَوْنَ وَثَمُودَ ﴿١٨﴾ بَلِ الَّذِينَ كَفَرُوا فِي تَكْذِيبٍ ﴿١٩﴾ وَاللَّهُ مِن
وَرَائِهِم مُّحِيطٌ ﴿٢٠﴾ بَلْ هُوَ قُرْآنٌ مَّجِيدٌ ﴿٢١﴾ فِي لَوْحٍ مَّحْفُوظٍ ﴿٢٢﴾

آياتها ١٧ — سُورَةُ الطَّارِقِ — ترتيبها ٨٦

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

(1) Sond bi asîmanê ku stêr tê de xwedî birc (çerx) in.

(2) Sond bi roja ku peymana wê hatiye dayîn (ku roja qiyametê ye).

(3) Sond bi wan ên ku şahdeyiyê didin û yên ku şahdeyî ji bo wan jî tê dayîn, ku…

(4) Xwedanê xendek û koncalan lenet li wan hatiye barandin.

(5) Ew koncalên ji agirê xwedanpêt.

(6) Wê dema ew (kafirên sitemkar) li dor êgir (li ser kursiyan) rûniştî…

(7) Ew li şkenceya ku bi bawermendan dikirin, amade bûn.

(8) Ji ber ku wan (mumînan) bawerî bi Xweda yê ’Ezîz û ‘Elîm anîbû, her wan ew didan ezab.

(9) Ew Xwedayê ku desthilatiya erd û esmanan her jê re ye, agahdarê bi her tiştî ye.

(10) Bêguman ew ên ku li mêr û jinên bawermend şkence kirine û paşê tobe jî nekirin, vêca ji bo wan ezabê cehenemê û ji bo wan ezabê şewitîner heye.

(11) Bêguman ew ên ku îman bînin û karên qenc bikin, ji wan re bihiştên wisa hene ku di binê wan de çem diherikin. Ha ev e serkeftin û rizgariya mezin.

(12) Bêguman higavtina Xwedayê te (ji bo kafir û sûckeran) pir dijwar e.

(13) Bêguman Xwedê ew e, yê ku ji tuneyî (mexlûq) afirandine, piştî mirinê dîsa dê wan sax jî bike.

(14) Her ew e gunehjêbir û bendedost.

(15) Ew e xwedanê Erş û xwedanê paya bilind.

(16) Xwedê çi bixwaze teqez wê dike.

(17) Erê ma xebera serpêhatiya leşkeran ji te re nehatiye?

(18) Leşkerên Firewn û Semûd.

(19) Belê ew ên ku kafir in, hê jî li ser bêbaweriya xwe ne (pend û şîret di guhê wan re naçin ku feydeyê jê wergirin).

(20) Xwedê hay ji wan heye, dê wan jî mîna leşkerê Firewn û Semûd têk bibe (ji ber Xwedê mecala revê jî tune ye).

(21) Bi rastî ew (a ku bawerî pê nedianî) Qurana Mecîd e (pîroz û qedirbilind e).

(22) (Ew Quran) di Lewhul Mehfûzê de parastî ye.

بِسْمِ اللَّهِ الرَّحْمَٰنِ الرَّحِيمِ
وَالسَّمَاءِ وَالطَّارِقِ ١ وَمَا أَدْرَاكَ مَا الطَّارِقُ ٢ النَّجْمُ الثَّاقِبُ ٣ إِن كُلُّ
نَفْسٍ لَّمَّا عَلَيْهَا حَافِظٌ ٤ فَلْيَنظُرِ الْإِنسَانُ مِمَّ خُلِقَ ٥ خُلِقَ مِن مَّاءٍ
دَافِقٍ ٦ يَخْرُجُ مِن بَيْنِ الصُّلْبِ وَالتَّرَائِبِ ٧ إِنَّهُ عَلَىٰ رَجْعِهِ لَقَادِرٌ ٨
يَوْمَ تُبْلَى السَّرَائِرُ ٩ فَمَا لَهُ مِن قُوَّةٍ وَلَا نَاصِرٍ ١٠ وَالسَّمَاءِ ذَاتِ الرَّجْعِ ١١
وَالْأَرْضِ ذَاتِ الصَّدْعِ ١٢ إِنَّهُ لَقَوْلٌ فَصْلٌ ١٣ وَمَا هُوَ بِالْهَزْلِ ١٤ إِنَّهُمْ
يَكِيدُونَ كَيْدًا ١٥ وَأَكِيدُ كَيْدًا ١٦ فَمَهِّلِ الْكَافِرِينَ أَمْهِلْهُمْ رُوَيْدًا ١٧

آياتها ١٩ — سُورَةُ الْأَعْلَىٰ — ترتيبها ٨٧

بِسْمِ اللَّهِ الرَّحْمَٰنِ الرَّحِيمِ
سَبِّحِ اسْمَ رَبِّكَ الْأَعْلَى ١ الَّذِي خَلَقَ فَسَوَّىٰ ٢ وَالَّذِي قَدَّرَ فَهَدَىٰ
٣ وَالَّذِي أَخْرَجَ الْمَرْعَىٰ ٤ فَجَعَلَهُ غُثَاءً أَحْوَىٰ ٥ سَنُقْرِئُكَ
فَلَا تَنسَىٰ ٦ إِلَّا مَا شَاءَ اللَّهُ ۚ إِنَّهُ يَعْلَمُ الْجَهْرَ وَمَا يَخْفَىٰ ٧ وَنُيَسِّرُكَ
لِلْيُسْرَىٰ ٨ فَذَكِّرْ إِن نَّفَعَتِ الذِّكْرَىٰ ٩ سَيَذَّكَّرُ مَن يَخْشَىٰ ١٠
وَيَتَجَنَّبُهَا الْأَشْقَى ١١ الَّذِي يَصْلَى النَّارَ الْكُبْرَىٰ ١٢ ثُمَّ لَا يَمُوتُ
فِيهَا وَلَا يَحْيَىٰ ١٣ قَدْ أَفْلَحَ مَن تَزَكَّىٰ ١٤ وَذَكَرَ اسْمَ رَبِّهِ فَصَلَّىٰ ١٥

## SÛREYÊ TARIQ

Sûreyê Tariq 17 (hivdeh) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva Et-Tariq derbas bûye û bi ma'neya "stêra tarîdirîn û ronîker" e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Sond bi asîman û tariqî…
2 Ma tu çi dizanî ka tariq çi ye?
3 Stêra tarîdirîn û ronîker (û şevçirax) e.
4 Tu kes nîn e ku li ser wî çavdêr tune bin (ku kiryarên wî dinivîsin).
5 Bila însan binêre ka ji çi hatiye afirandin!
6 Însan ji aveke verêtok (meniyê) hatiye xulqandin.
7 Ew menî ji nava hestiyê pişta mêran û hestiyê sînga jinan derdikeve.
8 Bêguman Xweda li ser saxkirina mirov, piştî mirinê xwedanhêz e.
9 Wê roja ku nehênî (raz û sir) aşkera dibin.
10 Ji însan re (ji bilî Xwedê) ne hêzek heye (ku nehêle bikeve ezab), ne jî arîkarek heye (ku wî biparêze).
11 Ez bi asîmanê ku baranê dibarîne…
12 Bi erda ku giya şîn dike, sond dixwim ku…
13 Bi rastî Quran gotineke jihevqetîn û cudaker e (ku heq û batilî ji hev cuda dike).
14 Ev Quran rastî ye, hîç ne lîstik e (çîrokeke toreyî ye).
15 Bi rastî kafir dehfekê vedidin (fend û fêlan çêdikin).
16 Ez jî dehfikan wan li wan vedigerînim (û planên wan pûç dikim).
17 Vêca muhletê bide wan, bêhna xwe li wan fireh bike (tu dê bibînî ka ez ê çi bînim serê wan)!

## SÛREYÊ E'LA

Sûreyê E'la 19 (nozdeh) ayet e. Li Mekkê daketiye û navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva El-E'la derbas bûye û bi ma'neya "bilind" e ku ew jî wesfek ji yên Xwedê Teala ye.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Navê Xwedayê xwe yê herî bilind pak bidêre.
2 Ew Xwedayê ku (mexlûq) afirandine û bêkêmasî şekil û teşe daye wan.
3 Ew Xwedayê ku her tişt bi pîvan kiriye û rasterê kiriye.
4 Ew ê ku ji erdê çêreya hêşîn deraniye.
5 Vêca stewand û kire pûşekî hişk û guhartî.
6 (Ya Muhemmed!) Em ê te bikin Quranxwîn, vêca tu yê wê ji bîr nekî.
7 Ji bilî ya ku Xwedê (jibîrkirina wê ji te re) bivê pê ve (ku ew cuda ye). Bi rastî Xwedê bi (gotina) aşkera û ya bi dizî dizane.
8 Em ê te bi ser riya hêsan ve bikin (ku îslam e).
9 Vêca tu (bi Quranê însanan) şîret bike, hema te dît ku şîret feydeyê bide wan.
10 Kesê ku ji Xwedê ditirse, dê şîretê wergire (û feydê jê bibîne).

(11) Kesê ku neqenc be dê xwe ji we'zê dûr bike.
(12) (Neqenc) Ew kes e, yê ku bikeve agirê herî mezin.
(13) Paşê ew di cehenemê de ne dimire ne jî sax dibe (her û her di ezabê dijwar de dimîne).
(14) Bêguman ew ê ku xwe (ji gunehan) paqij bike xelas bûye…
(15) Navê Rebbê xwe di bîr bîne, vêca nimêj bike.
(16) Belkî hûn jiyana dinyayê (di ser ya axiretê re) digirin û çêtir dibînin.
(17) Rewş ev e, jiyana axiretê çêtir û daîmtir e.
(18) Bêguman ev her di kitêbên pêşîn de ne…
(19) (Ku ew) di suhûfên Îbrahîm û Mûsa de ne.

## SÛREYÊ XAŞIYE

Sûreyê Xaşiye 26 (bîst û şeş) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva El-Xaşiye derbas bûye û bi ma'neya "niximînker" e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

(1) Ma xebera 'xaşiyê' (roja qiyametê ya ku tirs û lerza wê her kesî digire) ji te re nehatiye?
(2) Wê rojê hin ser û çav bitirs û rezîl in.
(3) Şuxilker û bi tehb in.
(4) Wê rojê dikevin agirekî pir germ.
(5) Ji kaniyeke kelijî têne avdan.
(6) Ji striyê genî û tehl pê ve ji wan re xwarin tune ye.
(7) Ew jî ne (wan) qelew dike ne jî birçîbûna wan dibe.
(8) Wê rojê hin ser û çav hene ku geş û mehdxweş in.
(9) Ji kar û xebata xwe (ya cîhanê) razî ne.
(10) Di ceneteke bilind de ne.
(11) Tê de kelevajî û gotina pûç nabihîzin.
(12) Tê de kaniyên ku li herk in, hene.
(13) Tê de textên qîmetbilind hene.
(14) (Li hafê kaniyan) Qedehên (ji bona avê) amadekirî…
(15) Palgehên rêzkirî…
(16) Mexfûrên raxistî, hene.
(17) Ma însan li deveyê nanêrin ka çawa hatiye afirandin?!

بَلْ تُؤْثِرُونَ الْحَيٰوةَ الدُّنْيَا ﴿١٦﴾ وَالْاٰخِرَةُ خَيْرٌ وَاَبْقٰى ﴿١٧﴾ اِنَّ
هٰذَا لَفِي الصُّحُفِ الْاُولٰى ﴿١٨﴾ صُحُفِ اِبْرٰهِيمَ وَمُوسٰى ﴿١٩﴾

ترتيبها ٨٨ — سُورَةُ الْغَاشِيَةِ — آياتها ٢٦

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

هَلْ اَتٰيكَ حَدِيثُ الْغَاشِيَةِ ﴿١﴾ وُجُوهٌ يَوْمَئِذٍ خَاشِعَةٌ ﴿٢﴾
عَامِلَةٌ نَاصِبَةٌ ﴿٣﴾ تَصْلٰى نَارًا حَامِيَةً ﴿٤﴾ تُسْقٰى مِنْ عَيْنٍ اٰنِيَةٍ ﴿٥﴾
لَيْسَ لَهُمْ طَعَامٌ اِلَّا مِنْ ضَرِيعٍ ﴿٦﴾ لَا يُسْمِنُ وَلَا يُغْنِي مِنْ جُوعٍ ﴿٧﴾
وُجُوهٌ يَوْمَئِذٍ نَاعِمَةٌ ﴿٨﴾ لِسَعْيِهَا رَاضِيَةٌ ﴿٩﴾ فِي جَنَّةٍ عَالِيَةٍ ﴿١٠﴾
لَا تَسْمَعُ فِيهَا لَاغِيَةً ﴿١١﴾ فِيهَا عَيْنٌ جَارِيَةٌ ﴿١٢﴾ فِيهَا سُرُرٌ مَرْفُوعَةٌ ﴿١٣﴾
وَاَكْوَابٌ مَوْضُوعَةٌ ﴿١٤﴾ وَنَمَارِقُ مَصْفُوفَةٌ ﴿١٥﴾ وَزَرَابِيُّ مَبْثُوثَةٌ ﴿١٦﴾
اَفَلَا يَنْظُرُونَ اِلَى الْاِبِلِ كَيْفَ خُلِقَتْ ﴿١٧﴾ وَاِلَى السَّمَاءِ كَيْفَ
رُفِعَتْ ﴿١٨﴾ وَاِلَى الْجِبَالِ كَيْفَ نُصِبَتْ ﴿١٩﴾ وَاِلَى الْاَرْضِ كَيْفَ
سُطِحَتْ ﴿٢٠﴾ فَذَكِّرْ اِنَّمَا اَنْتَ مُذَكِّرٌ ﴿٢١﴾ لَسْتَ عَلَيْهِمْ
بِمُصَيْطِرٍ ﴿٢٢﴾ اِلَّا مَنْ تَوَلّٰى وَكَفَرَ ﴿٢٣﴾ فَيُعَذِّبُهُ اللّٰهُ الْعَذَابَ
الْاَكْبَرَ ﴿٢٤﴾ اِنَّ اِلَيْنَا اِيَابَهُمْ ﴿٢٥﴾ ثُمَّ اِنَّ عَلَيْنَا حِسَابَهُمْ ﴿٢٦﴾

(18) Ma li asîman namêzînin ka çawa (bêstûn) hatiye bilindkirin?
(19) Ma li çiyan namêzînin ka çawa (di erdê de) hatine çikandin?
(20) Ma li erdê nanêrin ka çawa hatiye raxistin?
(21) Vêca (bi ayetên Xwedê li wan) şîret bike (û bîne bîra wan), bi rastî tu her şîretkar î.
(22) Tu li ser wan ne zordar î (heta ku bi kotekî wan bînî rê).
(23) Bes ew kesê ku pişta xwe bide îmanê û kafir bibe…
(24) Vêca Xwedê dê bi ezabê herî mezin wî bide ezabdanê.
(25) Bêguman vegera wan her bi bal me ve ye.
(26) Paşê hesabdîtina wan (bi xelat an celatê) li ser me ye.

آياتها ٣٠ — سُورَةُ الْفَجْرِ — ترتيبها ٨٩

بِسْمِ اللَّهِ الرَّحْمَٰنِ الرَّحِيمِ

وَالْفَجْرِ ﴿١﴾ وَلَيَالٍ عَشْرٍ ﴿٢﴾ وَالشَّفْعِ وَالْوَتْرِ ﴿٣﴾ وَاللَّيْلِ إِذَا يَسْرِ
﴿٤﴾ هَلْ فِي ذَٰلِكَ قَسَمٌ لِّذِي حِجْرٍ ﴿٥﴾ أَلَمْ تَرَ كَيْفَ فَعَلَ رَبُّكَ بِعَادٍ
﴿٦﴾ إِرَمَ ذَاتِ الْعِمَادِ ﴿٧﴾ الَّتِي لَمْ يُخْلَقْ مِثْلُهَا فِي الْبِلَادِ ﴿٨﴾
وَثَمُودَ الَّذِينَ جَابُوا الصَّخْرَ بِالْوَادِ ﴿٩﴾ وَفِرْعَوْنَ ذِي الْأَوْتَادِ ﴿١٠﴾
الَّذِينَ طَغَوْا فِي الْبِلَادِ ﴿١١﴾ فَأَكْثَرُوا فِيهَا الْفَسَادَ ﴿١٢﴾ فَصَبَّ
عَلَيْهِمْ رَبُّكَ سَوْطَ عَذَابٍ ﴿١٣﴾ إِنَّ رَبَّكَ لَبِالْمِرْصَادِ ﴿١٤﴾ فَأَمَّا
الْإِنسَانُ إِذَا مَا ابْتَلَاهُ رَبُّهُ فَأَكْرَمَهُ وَنَعَّمَهُ فَيَقُولُ رَبِّي أَكْرَمَنِ
﴿١٥﴾ وَأَمَّا إِذَا مَا ابْتَلَاهُ فَقَدَرَ عَلَيْهِ رِزْقَهُ فَيَقُولُ رَبِّي أَهَانَنِ ﴿١٦﴾
كَلَّا بَل لَّا تُكْرِمُونَ الْيَتِيمَ ﴿١٧﴾ وَلَا تَحَاضُّونَ عَلَىٰ طَعَامِ
الْمِسْكِينِ ﴿١٨﴾ وَتَأْكُلُونَ التُّرَاثَ أَكْلًا لَّمًّا ﴿١٩﴾
وَتُحِبُّونَ الْمَالَ حُبًّا جَمًّا ﴿٢٠﴾ كَلَّا إِذَا دُكَّتِ الْأَرْضُ دَكًّا
دَكًّا ﴿٢١﴾ وَجَاءَ رَبُّكَ وَالْمَلَكُ صَفًّا صَفًّا ﴿٢٢﴾ وَجِيءَ يَوْمَئِذٍ
بِجَهَنَّمَ يَوْمَئِذٍ يَتَذَكَّرُ الْإِنسَانُ وَأَنَّىٰ لَهُ الذِّكْرَىٰ ﴿٢٣﴾

# SÛREYÊ FECIR

Sûreyê Fecir sî (30) ayet e û li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva El-Fecr derbas bûye û bi ma'neya "spêde" yan jî "spêdeya her rojê" ye.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn**

(1) Sond bi spêde (ya her rojê)…
(2) Bi şevên ku deh in (deh şevên paşîn ên Remezanê yan jî deh şevên Zilhiccê)…
(3) Bi cot û ferê (ya her tiştî)..
(4) Bi şevê, gava ku her tiştî bi tarîtiya xwe diniximîne, diçe û tê, ku…
(5) Erê ma ev tiştê sond pê hatiye xwarin, ne hêjayî sond xwarinê ye?
(6) Ma tu nizanî ka Xwedayê te çi bi serê gelê Ad kiriye?
(7) Îrema xwedan stûnên bilind (yan jî pir bi hêz û xurt)…
(8) Ya ku li tu welatan ên wekî wan (xurt) nehatiye çêkirin.
(9) Ma te zanî ka Xwedayê te çi bi serê Semûd de aniye, ew ên ku di newalan de zinar kolane û birîne (da ku bi wan avahiyan lê bikin)…
(10) Ma ka çi bi serê Firewnê xwedî leşker aniye, ew leşkerên ku bi zend û hêz in.
(11) Ew ên ku li welatên xwe çavsorî û zêdegavî dikirin…
(12) Vêca tê de gelek tevdan û bêşermî kirin.
(13) Vêca Xwedayê te ezab û nexweşiyeke dijwar bi serê wan de anî.
(14) Bi rastî Xwedayê te, her dem li ber (wan) veketî ye (û çavdêr e).
(15) Herçî ku însan e, gava Xwedê bi xêr û qenciya xwe wî diceribîne, vêca qenciyê lê dike û pêxweşbûnekê didê, dibêje: Xwedayê min, bi min re kerem kiriye, ev qedir ji bo min e û nizane ku ew ceribandin e.
(16) Lê belê gava ku wî îmtîhan bike vêca risqê wî teng bike, dibêje: Xwedayê min, ez riswa kirime (û xwe layîqê vê nabîne).
(17) Nexêr ne wisan e (ango maldarî û xweşhalî ne ji qenciya wan e û feqirî û tengasî jî ne ji ber xerabiya wan e)! Belkî hûn bi rastî qenciyê der heqê sêwiyan de nakin.
(18) Hûn hev di ber arîkariya belengazan re ranakin…
(19) Hûn mîrateyên helal û heram tevlihev dixwin (ango hûn ji mîrasê para jin, zarok û sêwiyan, bi taybetî jî ya keçan nadin).
(20) Hûn gelek hez ji maldariyê dikin.
(21) Nexêr (dev ji van kirinên xwe berdin)! Gava ku erd li pey hev diheje (û parçe parçe dibe û diherife).
(22) Wê dema Xwedayê te (ji bo cudakirina heqiyê ji neheqiyê) hat û firîşte rêz bi rêz sef girtin, (wê çaxê, her tişt dê derkeve holê).
(23) Wê rojê dojeh tê ber çavan, wê rojê însan (kirinên xwe yeko yeko) di bîra xwe tîne. Lê belê ma çi feydeya vê bibîranînê ji wî re heye?
(24) (Ha wê çaxê însan) dê bibêje: Xwezî min ji bo jiyana xwe (ya axiretê) xêrek li pêşiya xwe şandibûya (axiretê).
(25) Wê rojê tu kes nikare mîna ezabê Xwedê bide.

26 Tu kes nikare mina qeyda ku Xwedê (kafiran pê) qeyd dike, qeyd bike.
27 (Wê rojê dê bê gotin:) Hey nefsa bibawer û ewle, nefsa piştrast û hedinî!
28 Qayilbûyî û qaîlkirî li Xwedayê xwe vegere.
29 Vêca têkeve nav bendeyên min…
30 Û têkeve ceneta min!

## SÛREYÊ BELED

Sûreyê Beled bîst (20) ayet e. Li Mekkê daketiye û navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva El-Beled derbas bûye ku bi ma’neya “bajar” e. Daxwaz jê bajarê Mekkê ye.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Sond bi vî bajarî (ku Mekke ye).
2 Ku tu jî akincî yî di vî bajarî de.
3 Sond bi her bav û zarokên wî (mexsed pê Adem û zuriyeta wî ye).
4 Bi rastî me însan di nav meşeqet û tengasiyan de afirandiye.
5 Ma însan hizir dike ku tu kes nikaribe bi wî?
6 Dibêje: Min malekî pir xerc kiriye.
7 Ma ew hizir dike ku kesekî ew nedîtiye?
8 Ma me du çav nedanê?
9 Ziman û du lêv jî?
10 Ma me her du rê (ya heq û batilî) nîşanî wî nedane?
11 De ka bila ji Eqebê (astengiyê) derbas bibe (ew astengên ku berê wan ji rizgarbûn û serfiraziyê dide paş).
12 Ma tu dizanî ka ew Eqebe (astengî) çi ye?
13 Azadkirina koleyekî ye.
14 Yan nandayînek e di roja dilaxêv de.

يَقُولُ يَٰلَيۡتَنِي قَدَّمۡتُ لِحَيَاتِي ﴿٢٤﴾ فَيَوۡمَئِذٖ لَّا يُعَذِّبُ عَذَابَهُۥٓ أَحَدٞ ﴿٢٥﴾
وَلَا يُوثِقُ وَثَاقَهُۥٓ أَحَدٞ ﴿٢٦﴾ يَٰٓأَيَّتُهَا ٱلنَّفۡسُ ٱلۡمُطۡمَئِنَّةُ ﴿٢٧﴾ ٱرۡجِعِيٓ
إِلَىٰ رَبِّكِ رَاضِيَةٗ مَّرۡضِيَّةٗ ﴿٢٨﴾ فَٱدۡخُلِي فِي عِبَٰدِي ﴿٢٩﴾ وَٱدۡخُلِي جَنَّتِي ﴿٣٠﴾

ترتيبها ٩٠ — سُورَةُ البَلَدِ — آياتها ٢٠

بِسۡمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحۡمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

لَآ أُقۡسِمُ بِهَٰذَا ٱلۡبَلَدِ ﴿١﴾ وَأَنتَ حِلُّۢ بِهَٰذَا ٱلۡبَلَدِ ﴿٢﴾ وَوَالِدٖ وَمَا وَلَدَ
﴿٣﴾ لَقَدۡ خَلَقۡنَا ٱلۡإِنسَٰنَ فِي كَبَدٍ ﴿٤﴾ أَيَحۡسَبُ أَن لَّن يَقۡدِرَ عَلَيۡهِ
أَحَدٞ ﴿٥﴾ يَقُولُ أَهۡلَكۡتُ مَالٗا لُّبَدًا ﴿٦﴾ أَيَحۡسَبُ أَن لَّمۡ يَرَهُۥٓ أَحَدٌ
﴿٧﴾ أَلَمۡ نَجۡعَل لَّهُۥ عَيۡنَيۡنِ ﴿٨﴾ وَلِسَانٗا وَشَفَتَيۡنِ ﴿٩﴾ وَهَدَيۡنَٰهُ
ٱلنَّجۡدَيۡنِ ﴿١٠﴾ فَلَا ٱقۡتَحَمَ ٱلۡعَقَبَةَ ﴿١١﴾ وَمَآ أَدۡرَىٰكَ مَا ٱلۡعَقَبَةُ ﴿١٢﴾
فَكُّ رَقَبَةٍ ﴿١٣﴾ أَوۡ إِطۡعَٰمٞ فِي يَوۡمٖ ذِي مَسۡغَبَةٖ ﴿١٤﴾ يَتِيمٗا ذَا مَقۡرَبَةٍ
﴿١٥﴾ أَوۡ مِسۡكِينٗا ذَا مَتۡرَبَةٖ ﴿١٦﴾ ثُمَّ كَانَ مِنَ ٱلَّذِينَ ءَامَنُواْ وَتَوَاصَوۡاْ
بِٱلصَّبۡرِ وَتَوَاصَوۡاْ بِٱلۡمَرۡحَمَةِ ﴿١٧﴾ أُوْلَٰٓئِكَ أَصۡحَٰبُ ٱلۡمَيۡمَنَةِ ﴿١٨﴾ وَٱلَّذِينَ
كَفَرُواْ بِـَٔايَٰتِنَا هُمۡ أَصۡحَٰبُ ٱلۡمَشۡـَٔمَةِ ﴿١٩﴾ عَلَيۡهِمۡ نَارٞ مُّؤۡصَدَةُۢ ﴿٢٠﴾

ترتيبها ٩١ — سُورَةُ الشَّمۡسِ — آياتها ١٥

15 Yan jî xwarindayîna sêwiyekî lêzim e (ku ji xizm û xwîna mirov e).
16 Yan jî, ji bo belengazekî destteng.
17 Piştî van lazim e xwedî bawer be û qewîtiya bêhnfirehiyê û qewîtiya merhemetê li hev bikin.
18 Ha ev in yên dilxweş û bextewar (ango deftera emelên xwe bi destê rastê werdigirin).
19 Ew ên ku ayetên me mandel dikin û bawerî bi wan nayînin, ew in yên bextreş û dilnexweş (bi destê çepê deftera emelên xwe werdigrin).
20 Di nav agirekî dadayî de ne, ji her aliyî ve agir li wan tê daxistin (bi tu awayî jê rizgar nabin).

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

وَالشَّمْسِ وَضُحٰيهَا ﴿١﴾ وَالْقَمَرِ اِذَا تَلٰيهَا ﴿٢﴾ وَالنَّهَارِ اِذَا جَلّٰيهَا ﴿٣﴾
وَالَّيْلِ اِذَا يَغْشٰيهَا ﴿٤﴾ وَالسَّمَٓاءِ وَمَا بَنٰيهَا ﴿٥﴾ وَالْاَرْضِ وَمَا طَحٰيهَا
﴿٦﴾ وَنَفْسٍ وَمَا سَوّٰيهَا ﴿٧﴾ فَاَلْهَمَهَا فُجُورَهَا وَتَقْوٰيهَا ﴿٨﴾ قَدْ
اَفْلَحَ مَنْ زَكّٰيهَا ﴿٩﴾ وَقَدْ خَابَ مَنْ دَسّٰيهَا ﴿١٠﴾ كَذَّبَتْ ثَمُودُ
بِطَغْوٰيهَٓا ﴿١١﴾ اِذِ انْبَعَثَ اَشْقٰيهَا ﴿١٢﴾ فَقَالَ لَهُمْ رَسُولُ اللّٰهِ
نَاقَةَ اللّٰهِ وَسُقْيٰيهَا ﴿١٣﴾ فَكَذَّبُوهُ فَعَقَرُوهَا فَدَمْدَمَ
عَلَيْهِمْ رَبُّهُمْ بِذَنْبِهِمْ فَسَوّٰيهَا ﴿١٤﴾ وَلَا يَخَافُ عُقْبٰيهَا ﴿١٥﴾

آياتها ٢١ — سُورَةُ اللَّيْلِ — ترتيبها ٩٢

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

وَالَّيْلِ اِذَا يَغْشٰى ﴿١﴾ وَالنَّهَارِ اِذَا تَجَلّٰى ﴿٢﴾ وَمَا خَلَقَ الذَّكَرَ وَالْاُنْثٰىٓ ﴿٣﴾
اِنَّ سَعْيَكُمْ لَشَتّٰى ﴿٤﴾ فَاَمَّا مَنْ اَعْطٰى وَاتَّقٰى ﴿٥﴾ وَصَدَّقَ بِالْحُسْنٰى ﴿٦﴾
فَسَنُيَسِّرُهُ لِلْيُسْرٰى ﴿٧﴾ وَاَمَّا مَنْ بَخِلَ وَاسْتَغْنٰى ﴿٨﴾ وَكَذَّبَ بِالْحُسْنٰى
﴿٩﴾ فَسَنُيَسِّرُهُ لِلْعُسْرٰى ﴿١٠﴾ وَمَا يُغْن۪ي عَنْهُ مَالُهُٓ اِذَا تَرَدّٰى ﴿١١﴾ اِنَّ عَلَيْنَا
لَلْهُدٰى ﴿١٢﴾ وَاِنَّ لَنَا لَلْاٰخِرَةَ وَالْاُو۫لٰى ﴿١٣﴾ فَاَنْذَرْتُكُمْ نَارًا تَلَظّٰى ﴿١٤﴾

## SÛREYÊ ŞEMS

Sûreyê Şems pazdeh (15) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva Eş-Şems derbas bûye û bi ma’neya “roj” e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Sond bi rojê û ronahiya wê…
2 Bi heyvê dema li pey rojê dertê…
3 Bi royê dema bi rojê ronî dibe…
4 Bi şevê gava ku tavê diniximîne (û dipêçe)…
5 Bi asîman û yê ku ew ava kiriye…
6 Bi erdê û yê ku ew (mîna hêkê ji jiyanê re) xweş kiriye…
7 Bi nefsê û yê ku şekil û awa bêkêmasî dayê…
8 Vêca sirûşa (îlhama) neqencî û teqwayê nîşan dayê, ku…
9 Bi rastî yê nefsa xwe ji gunehan paqij kir, ew serfiraz bûye.
10 Kesê ku nefsa xwe bi gunehan kêm kir, ew xesiriye.
11 Gelê Semûd ji ber çavsorî û zêdegaviya di gunehan de bi pêxemberê xwe bawerî neanî.
12 Dema yê ji wan herî pîstir (ji bo deveyê bikuje) bi lez rabû…
13 Vêca pêxemberê Xwedê ji wan re got: Hay ji deveya Xwedê û ava wê hebin!
14 Vêca wan bawerî pê neanî û deve jî şerjê kir. Êdî Xwedayê wan bi sedema gunehên wan, ezab bi ser wan de anî û ji navê ew bi yek carê birine helakê (ji ber ku hemû tê de hevpişk bûn).
15 Xweda, ji encama (helakkirina) wan jî natirse.

## SÛREYÊ LEYL

Sûreyê Leyl bîst û yek (21) ayet e û li Mekkê daketiye. Navê sûre ji ayeta pêşîn hatiye ku tê de El-Leyl derbas bûye û bi ma’neya “şev” e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Sond bi şevê dema bi tarîtiya xwe erdê diniximîne…
2 Bi rojê gava ronî dibe…
3 Bi Xwedayê ku nêr û mê afirandine, ku…
4 Bi rastî kar û xebata we ji hev cuda ye (hinek ber başiyê ve û hinek jî ber bi xerabiyê ve ne).
5 Vêca herçî ku (malê xwe di riya Xwedê de) da û hay ji fermanên Xwedê ma…
6 Bawerî bi cennetê anî û jê re xebat kir…
7 Êdî em ê jî riya wî ji bo ya hêsan (cennetê) sehl bikin.
8 Herçî ku nemerdiyê bike û xwe (ji xêr û xelatên Xwedê) nehewce bibîne…
9 Bawerî bi cennetê neyînê û jê re xebat neke…
10 Vêca em ê jî riya wî ji bo ya herî zor (agir û pîsîtiyê) sehl û hêsan bikin.
11 Gava ku bimire, yan jî ew bikeve êgir, malê wî dê tu feydê nedê.
12 Bi rastî li ser me ye rênîşandayîn (da hûn riya baş bigirin û xwe ji riya nebaş bidin alî).

13 Bêguman her tiştên li axiretê û yên li dinyayê yên me ne (nexwe kî wan ji xeyrî me bixwaze teqez ew çewt û şaş e).
14 Vêca me hûn ji agirekî gurî û geş hişyar kir.
15 Tenê yê rêwinda û kafir diçê.
16 Ew ê ku bi rastiyê bawerî neaniye û pişt daye îmanê.
17 Mutteqî (ew ê xwe ji gunehkarî û gawiriyê dûrkirî) dê ji wî agirî dûr bibe.
18 Ew ê ku malê xwe di riya Xwedê de xerc dike û ji gunehan xwe paqij dike.
19 Ne ku qenciyeke yekî li serê heye heta ku mukafata wî bide.
20 Her ji bo rizaya Xwedayê xwe yê herî bilind e (ev xêr kiriye).
21 Paşê ew mirov dê bi xelatên Xwedê qayîl û dilxweş bibe.

## SÛREYÊ DUHA

Sûreyê Ed-Duha yazdeh (11) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva Ed-Duha derbas bûye û bi ma'neya "danê tavê" ye.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Sond bi danê sibehê…
2 Bi şevê, gava aram û tarî dibe..
3 (Ya Muhemmed!) Xwedayê te dev ji te bernedaye û ji te nexeyidiye jî.
4 Axiret ji bo te ji dinyayê çêtir e.
5 Xwedayê te (li axiretê) dê bide te û tu dê razî bibî.
6 Ma tu ne sêwî bûy vêca Xwedê tu vehewandî?
7 Ma tu neheyirîbûy êdî Xwedê tu rasterê kir?
8 Ma tu ne xizan bûy Xwedê tu dewlemend kir?
9 Vêca herçî ku yê sêwî ye, tu wî riswa meke.
10 Herçî yê parsek e jî tu wî neqewirîne.
11 Herçî qencî û kerema Xwedayê te ye, vêca tu jê xeber bide û wê (ji xelkê re) bibêje.

لَا يَصْلَىٰهَآ إِلَّا ٱلْأَشْقَى ﴿١٥﴾ ٱلَّذِى كَذَّبَ وَتَوَلَّىٰ ﴿١٦﴾ وَسَيُجَنَّبُهَا
ٱلْأَتْقَى ﴿١٧﴾ ٱلَّذِى يُؤْتِى مَالَهُۥ يَتَزَكَّىٰ ﴿١٨﴾ وَمَا لِأَحَدٍ عِندَهُۥ مِن
نِّعْمَةٍ تُجْزَىٰٓ ﴿١٩﴾ إِلَّا ٱبْتِغَآءَ وَجْهِ رَبِّهِ ٱلْأَعْلَىٰ ﴿٢٠﴾ وَلَسَوْفَ يَرْضَىٰ ﴿٢١﴾

ترتيبها ٩٣ — سُورَةُ ٱلضُّحَىٰ — آياتها ١١

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

وَٱلضُّحَىٰ ﴿١﴾ وَٱلَّيْلِ إِذَا سَجَىٰ ﴿٢﴾ مَا وَدَّعَكَ رَبُّكَ وَمَا قَلَىٰ ﴿٣﴾
وَلَلْءَاخِرَةُ خَيْرٌ لَّكَ مِنَ ٱلْأُولَىٰ ﴿٤﴾ وَلَسَوْفَ يُعْطِيكَ رَبُّكَ
فَتَرْضَىٰٓ ﴿٥﴾ أَلَمْ يَجِدْكَ يَتِيمًا فَـَٔاوَىٰ ﴿٦﴾ وَوَجَدَكَ ضَآلًّا
فَهَدَىٰ ﴿٧﴾ وَوَجَدَكَ عَآئِلًا فَأَغْنَىٰ ﴿٨﴾ فَأَمَّا ٱلْيَتِيمَ فَلَا تَقْهَرْ
﴿٩﴾ وَأَمَّا ٱلسَّآئِلَ فَلَا تَنْهَرْ ﴿١٠﴾ وَأَمَّا بِنِعْمَةِ رَبِّكَ فَحَدِّثْ ﴿١١﴾

ترتيبها ٩٤ — سُورَةُ ٱلشَّرْحِ — آياتها ٨

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

أَلَمْ نَشْرَحْ لَكَ صَدْرَكَ ﴿١﴾ وَوَضَعْنَا عَنكَ وِزْرَكَ ﴿٢﴾ ٱلَّذِىٓ
أَنقَضَ ظَهْرَكَ ﴿٣﴾ وَرَفَعْنَا لَكَ ذِكْرَكَ ﴿٤﴾ فَإِنَّ مَعَ ٱلْعُسْرِ يُسْرًا ﴿٥﴾ إِنَّ
مَعَ ٱلْعُسْرِ يُسْرًا ﴿٦﴾ فَإِذَا فَرَغْتَ فَٱنصَبْ ﴿٧﴾ وَإِلَىٰ رَبِّكَ فَٱرْغَب ﴿٨﴾

## SÛREYÊ ŞERH

Sûreyê Şerh heşt (8) ayet e. Li Mekkê daketiye û navê sûre ji ayeta pêşîn hatiye ku tê de peyva Eş-Şerh derbas bûye û bi ma'neya "firehkirin" e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Erê ma me sînga te (resûlê min, ji bo ahkamên dîn) fireh nekir?
2 Ma me barê te li ser te sivik nekir?
3 Ew barê ku ku pişta te di bin de dikir qirçeqirç.
4 Ma me nav û dengê te bilind nekir?
5 Vêca bi rastî li dû her tengasiyê firehî tê.
6 Dîsa bi rastî li dû her tengasiyê firehî tê.
7 Vêca dema ku tu (ji karê xwe) vala bûy, (ji bo îbadet û dua) xwe biçikîne.
8 Bila hêvî û daxwaza te bi bal Xwedayê te ve be!

سُورَةُ التِّينِ
ترتيبها ٩٥ — آياتها ٨

بِسْمِ اللَّهِ الرَّحْمَٰنِ الرَّحِيمِ

وَالتِّينِ وَالزَّيْتُونِ ١ وَطُورِ سِينِينَ ٢ وَهَٰذَا الْبَلَدِ الْأَمِينِ ٣
لَقَدْ خَلَقْنَا الْإِنسَانَ فِي أَحْسَنِ تَقْوِيمٍ ٤ ثُمَّ رَدَدْنَاهُ أَسْفَلَ سَافِلِينَ
٥ إِلَّا الَّذِينَ آمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ فَلَهُمْ أَجْرٌ غَيْرُ مَمْنُونٍ ٦
فَمَا يُكَذِّبُكَ بَعْدُ بِالدِّينِ ٧ أَلَيْسَ اللَّهُ بِأَحْكَمِ الْحَاكِمِينَ ٨

سُورَةُ الْعَلَقِ
ترتيبها ٩٦ — آياتها ١٩

بِسْمِ اللَّهِ الرَّحْمَٰنِ الرَّحِيمِ

اقْرَأْ بِاسْمِ رَبِّكَ الَّذِي خَلَقَ ١ خَلَقَ الْإِنسَانَ مِنْ عَلَقٍ ٢ اقْرَأْ وَرَبُّكَ
الْأَكْرَمُ ٣ الَّذِي عَلَّمَ بِالْقَلَمِ ٤ عَلَّمَ الْإِنسَانَ مَا لَمْ يَعْلَمْ ٥ كَلَّا إِنَّ
الْإِنسَانَ لَيَطْغَىٰ ٦ أَن رَّآهُ اسْتَغْنَىٰ ٧ إِنَّ إِلَىٰ رَبِّكَ الرُّجْعَىٰ ٨ أَرَأَيْتَ
الَّذِي يَنْهَىٰ ٩ عَبْدًا إِذَا صَلَّىٰ ١٠ أَرَأَيْتَ إِن كَانَ عَلَى الْهُدَىٰ ١١ أَوْ أَمَرَ
بِالتَّقْوَىٰ ١٢ أَرَأَيْتَ إِن كَذَّبَ وَتَوَلَّىٰ ١٣ أَلَمْ يَعْلَم بِأَنَّ اللَّهَ يَرَىٰ ١٤ كَلَّا لَئِن
لَّمْ يَنتَهِ لَنَسْفَعًا بِالنَّاصِيَةِ ١٥ نَاصِيَةٍ كَاذِبَةٍ خَاطِئَةٍ ١٦ فَلْيَدْعُ نَادِيَهُ
١٧ سَنَدْعُ الزَّبَانِيَةَ ١٨ كَلَّا لَا تُطِعْهُ وَاسْجُدْ وَاقْتَرِب ۩ ١٩

## SÛREYÊ TÎN

Sûreyê Tîn, heşt (8) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva Et-Tîn derbas bûye û bi ma'neya "hejîr" e, yan jî navê çiyayekî ye.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Sond bi hejîr û zeytûnê…
2 Bi Çiyayê Tûrî Sîna (çiyayê pîroz û rind ew cihê ku Xwedê bi Mûsa re peyiviye).
3 Bi vî bajarê ewle (ku Mekke ye), ku…
4 Bi rastî jî Me însan di baştirîn çêkirin de afirandiye.
5 Paşê me ew gerandiye nizmtirînê nizman.
6 Ji bilî yên bawerî anî û emelê salih kirin, vêca ji wan re perûyeke bêqutbûn heye.
7 Êdî (hey însan!) ew çi ye ku piştî vê yekê te ji roja cezadanê bêbawer dike?
8 Erê ma Xwedayê bilind ne mikûmtirîn fermanrewa ye.

## SÛREYÊ 'ELEQ

Sûreyê 'Eleq nozdeh (19) ayet e. Li Mekkê daketiye. Navê sûre ji ayeta 2'em tê ku tê de peyva Eleq derbas bûye û bi ma'neya "xwîna hişk" e. Navekî din ê vî sûreyî jî "Iqr'a" ye ku ew jî bi ma'neya "bixwîne" ye.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Bi navê Xwedayê xwe bixwîne, ew ê ku her tişt çêkiriye!
2 Ku însan ji (parçeyek) xwîna hişk çêkiriye.
3 Bixwîne û fêr bibe! Xwedayê te ji her kesî keremdartir e.
4 Ew Xwedayê bi riya qelemê mirov fêrî nivisîn û zanistê kiriye.
5 Însan fêrî ya ku nizanê kiriye.
6 Nexêr, ne wisan e, qenciya Xwedê ji bîr nekin! Bi rastî însan ji rê derdikeve…
7 Dema xwe maldar û nehewce dibîne.
8 Bêguman veger her bi bal Xwedayê te ve ye.
9 Ka ji min re bêje: Ma te nedît yê ku riya nimêjê digire.
10 (Riya nimêjê) li evdekî digire dema dixwaze nimêj bike.
11 De ka ji min re bibêje; eger ew (astengker) di riya rast de bûya…
12 Yan jî daxwaza teqwadariyê kiribûya (dê hê çêtir nebûya)!
13 Ma te nedît eger ew (astengker) bi rastiyê bawerî neyînê û pişta xwe bide îmanê…
14 Erê ma ew nizane ku Xwedê wî dibîne!
15 Nexêr, bila wisa neke, sond be ku ew ji ya ku dibêje û dike venegere; di cih de em ê bi perçem wî bigirin (û di cehenemê de werbikin).
16 Perçemek e, derewkera gunehkar.
17 Vêca bila gazî heval û civata xwe bike.
18 Em jî dê gazî zebaniyan (zêrevanê cehenemê) bikin.
19 Nexêr, guhê xwe nede wî. Ji Xwedayê xwe re here sicûdê û xwe nêzîkî wî bike!

# SÛREYÊ QEDR

Sûreyê Qedr, pênc (5) ayet e. Li Mekkê daketiye û navê sûre ji ayeta 1'em, 2'yem û 3'yem hatiye ku di wan de peyva El-Qedr derbas bûye û behsa şeva qedra pîroz dike ku qedr jî bi ma'neya "diyarkirin û binavkirin" e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Bi rastî me Quran di Şeva Qedrê de (şeva birêz û rûmet de) aniye xwarê.

2 Ma tu çi dizanî ka Şeva Qedrê çi ye?

3 Şeva Qedrê ji hezar heyvî bixêrtir e, (îbadetên di vê şevê de ji îbadetên hezar heyvê ku ev şev tê de tune be, bixêrtir e).

4 Di wê şevê de, melayîket û Ruh (Cibrîl) bi destûra Xwedayê xwe, der barê her kar û barî de têne ser erdê.

5 Ew şev selametî û aramî ye. Heyanî spêdeyê berdewam e.

# SÛREYÊ BEYYÎNE

Sûreyê Beyyîne, heşt (8) ayet e. Li Medîneyê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de bêjeya "El-Beyyîne derbas bûye û bi ma'neya "delîl û pêbaweriya aşkera" ye.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Ew ên ku ji ehlê kitêb û muşrikan kafir bûne, heta ku delîl û nîşaneke aşkera ji wan re neyê, dev ji bêbaweriya xwe bernadin.

2 Ew (delîl û nîşan) pêxemberek e ku ew ji cem Xwedê hatiye hinartin, ew rûpelên pîroz (ku Qurana) li ser wan dixwîne.

3 Çend fermanên binirx û rastgo tê de ne.

4 Ewên kitêb ji bo wan hatin, bes piştî ku delîla aşkera (ku pêxember e) ji wan re hat, ketin îxtilafê.

سُورَةُ القَدْرِ — ترتيبها ٩٧ — آياتها ٥

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

إِنَّآ أَنزَلْنَٰهُ فِى لَيْلَةِ ٱلْقَدْرِ ﴿١﴾ وَمَآ أَدْرَىٰكَ مَا لَيْلَةُ ٱلْقَدْرِ ﴿٢﴾
لَيْلَةُ ٱلْقَدْرِ خَيْرٌ مِّنْ أَلْفِ شَهْرٍ ﴿٣﴾ تَنَزَّلُ ٱلْمَلَٰٓئِكَةُ وَٱلرُّوحُ
فِيهَا بِإِذْنِ رَبِّهِم مِّن كُلِّ أَمْرٍ ﴿٤﴾ سَلَٰمٌ هِىَ حَتَّىٰ مَطْلَعِ ٱلْفَجْرِ ﴿٥﴾

سُورَةُ البَيِّنَةِ — ترتيبها ٩٨ — آياتها ٨

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

لَمْ يَكُنِ ٱلَّذِينَ كَفَرُوا۟ مِنْ أَهْلِ ٱلْكِتَٰبِ وَٱلْمُشْرِكِينَ مُنفَكِّينَ
حَتَّىٰ تَأْتِيَهُمُ ٱلْبَيِّنَةُ ﴿١﴾ رَسُولٌ مِّنَ ٱللَّهِ يَتْلُوا۟ صُحُفًا مُّطَهَّرَةً ﴿٢﴾
فِيهَا كُتُبٌ قَيِّمَةٌ ﴿٣﴾ وَمَا تَفَرَّقَ ٱلَّذِينَ أُوتُوا۟ ٱلْكِتَٰبَ إِلَّا مِنۢ
بَعْدِ مَا جَآءَتْهُمُ ٱلْبَيِّنَةُ ﴿٤﴾ وَمَآ أُمِرُوٓا۟ إِلَّا لِيَعْبُدُوا۟ ٱللَّهَ مُخْلِصِينَ
لَهُ ٱلدِّينَ حُنَفَآءَ وَيُقِيمُوا۟ ٱلصَّلَوٰةَ وَيُؤْتُوا۟ ٱلزَّكَوٰةَ ۚ وَذَٰلِكَ دِينُ
ٱلْقَيِّمَةِ ﴿٥﴾ إِنَّ ٱلَّذِينَ كَفَرُوا۟ مِنْ أَهْلِ ٱلْكِتَٰبِ وَٱلْمُشْرِكِينَ
فِى نَارِ جَهَنَّمَ خَٰلِدِينَ فِيهَآ ۚ أُو۟لَٰٓئِكَ هُمْ شَرُّ ٱلْبَرِيَّةِ ﴿٦﴾ إِنَّ
ٱلَّذِينَ ءَامَنُوا۟ وَعَمِلُوا۟ ٱلصَّٰلِحَٰتِ أُو۟لَٰٓئِكَ هُمْ خَيْرُ ٱلْبَرِيَّةِ ﴿٧﴾

5 Ew bes hatibûn fermankirin ku ew îbadetê Xwedayê Mezin bikin, di dînê Xwedê de dilbaş û dilsoj bin, berê xwe ji her baweriya xwar û vîç vegerînin û berê xwe bidin riya Xwedê, bi berdewamî û awayê pêdivî nimêj bikin û zekata malê xwe bidin. Ha ev e dînê rast û durist.

6 Bi rastî ew ên ku bawerî neanî ji ehlê kitêb û muşrikan, ew dê biçin agirê dojehê û dê her û her tê de bimînin. Ha ew pîstirînê mexlûqan in.

7 Bi rastî yên ku bawerî anî û karên qenc kirin, ew çêtirînê mexlûqan in.

8 Mukafata wan li cem Xwedayê wan bihiştên **Ednê** ne ku di binê wan de çem dikişin û heta hetayê ew dê di wan de bin. Xwedê ji wan razî bûye û ew jî jê

جَزَآؤُهُمْ عِندَ رَبِّهِمْ جَنَّـٰتُ عَدْنٍ تَجْرِى مِن تَحْتِهَا ٱلْأَنْهَـٰرُ خَـٰلِدِينَ
فِيهَآ أَبَدًا ۖ رَّضِىَ ٱللَّهُ عَنْهُمْ وَرَضُوا۟ عَنْهُ ۚ ذَٰلِكَ لِمَنْ خَشِىَ رَبَّهُۥ ﴿٨﴾

ترتيبها ٩٩ — سُورَةُ الزَّلْزَلَةِ — آياتها ٨

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَـٰنِ ٱلرَّحِيمِ

إِذَا زُلْزِلَتِ ٱلْأَرْضُ زِلْزَالَهَا ﴿١﴾ وَأَخْرَجَتِ ٱلْأَرْضُ أَثْقَالَهَا
﴿٢﴾ وَقَالَ ٱلْإِنسَـٰنُ مَا لَهَا ﴿٣﴾ يَوْمَئِذٍ تُحَدِّثُ أَخْبَارَهَا ﴿٤﴾
بِأَنَّ رَبَّكَ أَوْحَىٰ لَهَا ﴿٥﴾ يَوْمَئِذٍ يَصْدُرُ ٱلنَّاسُ أَشْتَاتًا
لِّيُرَوْا۟ أَعْمَـٰلَهُمْ ﴿٦﴾ فَمَن يَعْمَلْ مِثْقَالَ ذَرَّةٍ خَيْرًا
يَرَهُۥ ﴿٧﴾ وَمَن يَعْمَلْ مِثْقَالَ ذَرَّةٍ شَرًّا يَرَهُۥ ﴿٨﴾

ترتيبها ١٠٠ — سُورَةُ العَادِيَاتِ — آياتها ١١

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَـٰنِ ٱلرَّحِيمِ

وَٱلْعَـٰدِيَـٰتِ ضَبْحًا ﴿١﴾ فَٱلْمُورِيَـٰتِ قَدْحًا ﴿٢﴾ فَٱلْمُغِيرَٰتِ صُبْحًا
﴿٣﴾ فَأَثَرْنَ بِهِۦ نَقْعًا ﴿٤﴾ فَوَسَطْنَ بِهِۦ جَمْعًا ﴿٥﴾ إِنَّ ٱلْإِنسَـٰنَ
لِرَبِّهِۦ لَكَنُودٌ ﴿٦﴾ وَإِنَّهُۥ عَلَىٰ ذَٰلِكَ لَشَهِيدٌ ﴿٧﴾ وَإِنَّهُۥ لِحُبِّ
ٱلْخَيْرِ لَشَدِيدٌ ﴿٨﴾ ۞ أَفَلَا يَعْلَمُ إِذَا بُعْثِرَ مَا فِى ٱلْقُبُورِ ﴿٩﴾

razî bûne. Ev perû ji bo wî kesî ye ku ji Xwedayê xwe bitirse (xwe ji gunehan biparêze û wezîfeya xwe tekûz bi cih bîne).

## SÛREYÊ ZELZELE

Sûreyê Zelzele, heşt (8) ayet e. Li Medîneyê daketiye û nav ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva Zelzele derbas bûye û bi maneya “erdhej” e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

(1) Dema erd (ji bo rabûna qiyametê) bi heja xwe ya taybetî biheje…

(2) Dema erd çiqas tiştên di zikê xwe de derîne ser xwe…

(3) Dema însan jî bibêjê: Ev çima diheje û çi lê hatiye!

(4) Ha wê rojê, erd dê hemû xeberên xwe ragihîne û bibêje (ya ku li ser çêbûye).

(5) Ku Xwedayê te bi wehyê wisa ferman lê kiriye ku her tiştî ragihîne û bibêje.

(6) Wê rojê, însan ji xweûmere û bi belengazî (ji goran) radibin da (encama) kirinên xwe bibînin.

(7) Kî bi qasî giraniya zereyekê qencî kiribe dê (beranberî) wê bibîne.

(8) Kî jî bi qasî giraniya zereyekê neqencî kiribe dê (beranberî) wê bibîne.

## SÛREYÊ ’ADIYAT

Sûreyê ’Adiyat, yazdeh (11) ayet e û li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de bêjeya El-A’diyat boriye û bi ma’neya “bezokên bixurexur” e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

(1) Sond bi hespên beza ku bi xirexir baz didin…

(2) Bi (hesp) ên ku bi nalên xwe çîkan dertînin…

(3) Bi (hesp)ên ku di sibehê de ji nişka ve êrîşê dibin (ser dijminan)…

(4) Vêca toz û dûmanê berhewa dikin…

(5) Bi wê tozê dikevin nava koma (neyaran û wan tarûmar dikin), ku…

(6) Însan li hemberî Xwedayê xwe pir nankor e.

(7) Bêguman ew bi xwe jî li ser vê (nankoriyê) şahid e (û li xwe mukirhatî ye).

(8) Bêguman ew, pir pir ji maldariyê hez dike.

(9) Erê ma ew nizane gava miriyên di goran de radibin û sax dibin...

(10) Ya ku di sîng û dilan de veşartî jî aşkera dibe…

(11) Bi rastî wê rojê haya Xwedayê wan, ji wan heye (û dê li gorî kirinên wan, wan xelat an jî celat bike)!

## SÛREYÊ QARÎ'E

Sûreyê Qarî’e yazdeh (11) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre, navê xwe ji ayetên 1’em, 2’yem û 3’yem girtiye ku di wan de bêjeya El-Qarî’e derbas bûye û bi ma’neya “derîreqîn” e. Daxwaz jê ew qiyamet e ku dilan direqîne.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 El-Qarî’e (Qiyameta jiguhkir). Lewra bi tirs û nexweşiya xwe mirovan ji guhan dike.

2 Ma Qarî’e çi ye?

3 Ma tu çi dizanî ka Qarî’e çi ye?

4 Ew roj e ku însan dibin wekî perperîkên şerpeze û belavbûyî…

5 Çiya jî dibin wekî hiriya jendî!

6 Vêca ew kesê ku teraziya xêrên wî giran be…

7 Êdî ew ê di nava jiyaneke jêrazî û rihet de be.

8 Herçî kesê ku teraziya xêrên wî sivik be (gunehên wî ji xêrên wî pirtir bin)…

9 Vêca cihê wî hawiye ye.

10 Ma tu dizanî ka hawiye çi ye?

11 Agirekî bipêt e, cansoj û dijwar e!

## SÛREYÊ TEKASUR

Sûreyê Tekasur heşt (8) ayet e û li Mekkê daketiye. Navê sûre ji ayeta pêşîn tê ku tê de peyva Et-Tekasur derbas bûye û ma’neya wê “bi pirbûnê pesndayîn” e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Malkomkirin û maldariya dinyayê, kubarî û pozbilindî (ya bi pirbûna zarok û mêran), hûn (ji îbadetê ji bo Xwedê) ji bîr ve kirine.

وَحُصِّلَ مَا فِي ٱلصُّدُورِ ١٠ إِنَّ رَبَّهُم بِهِمۡ يَوۡمَئِذٖ لَّخَبِيرُۢ ١١

سُورَةُ القَارِعَةِ — ترتيبها ١٠١ — آياتها ١١

بِسۡمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحۡمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

ٱلۡقَارِعَةُ ١ مَا ٱلۡقَارِعَةُ ٢ وَمَآ أَدۡرَىٰكَ مَا ٱلۡقَارِعَةُ
٣ يَوۡمَ يَكُونُ ٱلنَّاسُ كَٱلۡفَرَاشِ ٱلۡمَبۡثُوثِ ٤
وَتَكُونُ ٱلۡجِبَالُ كَٱلۡعِهۡنِ ٱلۡمَنفُوشِ ٥ فَأَمَّا
مَن ثَقُلَتۡ مَوَٰزِينُهُۥ ٦ فَهُوَ فِي عِيشَةٖ رَّاضِيَةٖ
٧ وَأَمَّا مَنۡ خَفَّتۡ مَوَٰزِينُهُۥ ٨ فَأُمُّهُۥ هَاوِيَةٞ
٩ وَمَآ أَدۡرَىٰكَ مَا هِيَهۡ ١٠ نَارٌ حَامِيَةُۢ ١١

سُورَةُ التَّكَاثُرِ — ترتيبها ١٠٢ — آياتها ٨

بِسۡمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحۡمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

أَلۡهَىٰكُمُ ٱلتَّكَاثُرُ ١ حَتَّىٰ زُرۡتُمُ ٱلۡمَقَابِرَ ٢ كَلَّا سَوۡفَ
تَعۡلَمُونَ ٣ ثُمَّ كَلَّا سَوۡفَ تَعۡلَمُونَ ٤ كَلَّا لَوۡ تَعۡلَمُونَ
عِلۡمَ ٱلۡيَقِينِ ٥ لَتَرَوُنَّ ٱلۡجَحِيمَ ٦ ثُمَّ لَتَرَوُنَّهَا
عَيۡنَ ٱلۡيَقِينِ ٧ ثُمَّ لَتُسۡـَٔلُنَّ يَوۡمَئِذٍ عَنِ ٱلنَّعِيمِ ٨

2 Bi vê rewşê heta mirin bi ser we de hat. An jî hûn çûn seredana goristanan (û we bi piraniya mirîyên di goran de jî xwe pesinand).

3 Nexêr, tiştê hûn dikin ne di rê de ye. Paşê hûn ê bizanin (ka encama vê çawan e)!

4 Disa nexêr! Paşê hûn dê bizanin!

5 Na! Eger we bi yeqînî zanîbûya (encama we ezab û nexweşî ye, we dê xwe ji bîr ve nekiribûya)!

6 Bêguman (li axiretê) hûn ê cehenemê bi çavên serê xwe bibînin!

7 Paşê li axiretê hûn ê bi çavên xwe dojehê bibînin.

8 Paşê wê rojê hûn ê ji nîmet û xweşiyên li ser xwe bêne pirsyarkirin!

سُورَةُ العَصرِ — ترتيبها ١٠٣ — آياتها ٣

بِسۡمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحۡمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

وَٱلۡعَصۡرِ ﴿١﴾ إِنَّ ٱلۡإِنسَٰنَ لَفِي خُسۡرٍ ﴿٢﴾ إِلَّا ٱلَّذِينَ ءَامَنُواْ
وَعَمِلُواْ ٱلصَّٰلِحَٰتِ وَتَوَاصَوۡاْ بِٱلۡحَقِّ وَتَوَاصَوۡاْ بِٱلصَّبۡرِ ﴿٣﴾

سُورَةُ الهُمَزَةِ — ترتيبها ١٠٤ — آياتها ٩

بِسۡمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحۡمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

وَيۡلٞ لِّكُلِّ هُمَزَةٖ لُّمَزَةٍ ﴿١﴾ ٱلَّذِي جَمَعَ مَالٗا وَعَدَّدَهُۥ ﴿٢﴾
يَحۡسَبُ أَنَّ مَالَهُۥٓ أَخۡلَدَهُۥ ﴿٣﴾ كَلَّاۖ لَيُنۢبَذَنَّ فِي ٱلۡحُطَمَةِ ﴿٤﴾
وَمَآ أَدۡرَىٰكَ مَا ٱلۡحُطَمَةُ ﴿٥﴾ نَارُ ٱللَّهِ ٱلۡمُوقَدَةُ ﴿٦﴾ ٱلَّتِي تَطَّلِعُ
عَلَى ٱلۡأَفۡـِٔدَةِ ﴿٧﴾ إِنَّهَا عَلَيۡهِم مُّؤۡصَدَةٞ ﴿٨﴾ فِي عَمَدٖ مُّمَدَّدَةِۭ ﴿٩﴾

سُورَةُ الفِيلِ — ترتيبها ١٠٥ — آياتها ٥

بِسۡمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحۡمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

أَلَمۡ تَرَ كَيۡفَ فَعَلَ رَبُّكَ بِأَصۡحَٰبِ ٱلۡفِيلِ ﴿١﴾ أَلَمۡ يَجۡعَلۡ كَيۡدَهُمۡ
فِي تَضۡلِيلٖ ﴿٢﴾ وَأَرۡسَلَ عَلَيۡهِمۡ طَيۡرًا أَبَابِيلَ ﴿٣﴾ تَرۡمِيهِم
بِحِجَارَةٖ مِّن سِجِّيلٖ ﴿٤﴾ فَجَعَلَهُمۡ كَعَصۡفٖ مَّأۡكُولِۭ ﴿٥﴾

## SÛREYÊ 'ESIR

Sûreyê 'Esir, sê (3) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva 'Esir derbas bûye û bi ma'neya "sedsal, çax, berêvar û nimêja berêvarê" ye.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Sond bi zeman, an jî bi zemanê nimêja êvarê.

2 Bi rastî mirov hemû di ziyanê de ne.

3 Ji bilî yên ku bawerî anî û karên qenc kirin û li ser heqî û bêhnfirehiyê hev şîret kirin.

## SÛREYÊ HUMEZE

Sûreyê Humeze, neh (9) ayet e. Li Mekkê daketiye û nav ji ayeta pêşîn tê ku tê de peyva Humeze dibihure û bi ma'neya "seb, tinazkirin û rencîdekirin û şermezarkirin" e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Hey wax li halê çiqas kesê eybderêx û tehnavêj be.

2 Ew ê ku (mal û) serwetê kom dike û dihejmêre!

3 Ji wî we ye ku serweta wî (li dinyayê) dê wî her û her bihêle (û wî bike nemir).

4 Nexêr, bila wê hizirê neke! Bi rastî ew ê di hutemeyê de bê werkirin.

5 Erê ma tu çi dizanî ku huteme çi ye?

6 Agirê Xwedê yê pêketî ye.

7 Ew agirê ku ser û dilan digire.

8 Bi rastî ew agir li ser wan girtî û dadayî ye.

9 Bi stûnên dirêjkirî ve girêdayî ne.

## SÛREYÊ FÎL

Sûreyê Fîl pênc (5) ayet e û li Mekkê daketiye. Navê sûre ji ayeta pêşîn hatiye ku tê de peyva Fîl derbas bûye ku ew jî heywanekî naskirî ye.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Ma te nezanî ka Xwedayê te çi bi serê xwedanê fîl (Ebreheyê Hebeşî û leşkerê wî) kir?

2 Ma me plan û fenda wan berhewa û pûç nekir?

3 Çûkên ref bi ref şande ser wan (û bi çûkan ew ji holê rakirin).

4 Wan çivîkan, kevirên ji heriya pehtî avêtin ser wan.

5 Vêca Xwedê (bi wan keviran) ew kirin wekî kaya xwarî ya bibinpiyanketî.

## SÛREYÊ QUREYŞ

Sûreyê Qureyş çar (4) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre, navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva Qureyş derbas bûye û ew navê êla Pêxemberê alîcenab e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Bi sebûnet hogirî û sehilkirina karwaniyê bi qureyşiyan.

2 Hogirî û sehlkirina karwaniya zivistanê (ji bo Yemenê) û havînê (ji bo Şamê).

3 Vêca bila qureyşî, xwedanê vê malê (ku Ke’be ye) bihebînin.

4 Wî Xwedayê ku ew ji birçîbûnê têr kirine û ji tirsê ewle kirine.

## SÛREYÊ MA’ÛN

Sûreyê Ma’ûn heft (7) ayet e û li Mekkê daketiye. Nav ji ayeta heftem tê ku tê de bêjeya Ma’ûn boriye û bi ma’neya “arîkarî, zekatdayîn û sedeqedayîn, feydedayîn” e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Ma te nedît ew ê ku bi roja cezadanê (ku qiyamet e) bawerî nayînî?

2 Vêca ew bêbawer, ew ê ku yê sêwî bi dilhişkî dide paş (û merhemetê lê nake).

3 Ji bo nandayîn û têrkirina belengazan kesî di ber re nake.

4 Wax li halê nimêjkeran be…

6 Ew nimêjkerên ku haya wan ji nimêja wan nîn e, (di çaxê wê de nakin, an jî rukn û şertê wê bi cih nayînin).

5 Ew ên ku (di nimêj û qenciyan de) zerqekariyê (riyakariyê) dikin.

7 Riya qedandinê jî li ber hewcedaran digirin.

ترتيبها ١٠٦ — سُورَةُ قُرَيْشٍ — آياتها ٤

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

لِإِيلَٰفِ قُرَيْشٍ ١ إِۦلَٰفِهِمْ رِحْلَةَ ٱلشِّتَآءِ وَٱلصَّيْفِ
٢ فَلْيَعْبُدُوا۟ رَبَّ هَٰذَا ٱلْبَيْتِ ٣ ٱلَّذِىٓ أَطْعَمَهُم
مِّن جُوعٍ وَءَامَنَهُم مِّنْ خَوْفٍۭ ٤

ترتيبها ١٠٧ — سُورَةُ المَاعُونِ — آياتها ٧

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

أَرَءَيْتَ ٱلَّذِى يُكَذِّبُ بِٱلدِّينِ ١ فَذَٰلِكَ ٱلَّذِى
يَدُعُّ ٱلْيَتِيمَ ٢ وَلَا يَحُضُّ عَلَىٰ طَعَامِ ٱلْمِسْكِينِ ٣
فَوَيْلٌ لِّلْمُصَلِّينَ ٤ ٱلَّذِينَ هُمْ عَن صَلَاتِهِمْ سَاهُونَ
٥ ٱلَّذِينَ هُمْ يُرَآءُونَ ٦ وَيَمْنَعُونَ ٱلْمَاعُونَ ٧

ترتيبها ١٠٨ — سُورَةُ الكَوْثَرِ — آياتها ٣

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

إِنَّآ أَعْطَيْنَٰكَ ٱلْكَوْثَرَ ١ فَصَلِّ لِرَبِّكَ وَٱنْحَرْ ٢
إِنَّ شَانِئَكَ هُوَ ٱلْأَبْتَرُ ٣

## SÛREYÊ KEWSER

Sûreyê Kewser sê (3) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva Kewser derbas bûye û bi ma’neya “xêra pir, li cenetê çemek, hewzek” e. Pêxembertî, Quran û şefaet e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Bi rastî me kewser (xêra pir) daye te (resûlê min).

2 Vêca ji Rebbê xwe re nimêj bike û qurbanê şerjê bike.

3 Bi rastî yê ku ji te dikeribe û hez ji te nake, ew e yê warkor û bêdunde.

سُورَةُ الكَافِرُونَ — ترتيبها ١٠٩ — آياتها ٦

بِسۡمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحۡمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

قُلۡ يَٰٓأَيُّهَا ٱلۡكَٰفِرُونَ ١ لَآ أَعۡبُدُ مَا تَعۡبُدُونَ ٢
وَلَآ أَنتُمۡ عَٰبِدُونَ مَآ أَعۡبُدُ ٣ وَلَآ أَنَا۠ عَابِدٞ مَّا عَبَدتُّمۡ ٤
وَلَآ أَنتُمۡ عَٰبِدُونَ مَآ أَعۡبُدُ ٥ لَكُمۡ دِينُكُمۡ وَلِيَ دِينِ ٦

سُورَةُ النَّصۡرِ — ترتيبها ١١٠ — آياتها ٣

بِسۡمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحۡمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

إِذَا جَآءَ نَصۡرُ ٱللَّهِ وَٱلۡفَتۡحُ ١ وَرَأَيۡتَ ٱلنَّاسَ
يَدۡخُلُونَ فِي دِينِ ٱللَّهِ أَفۡوَاجٗا ٢ فَسَبِّحۡ بِحَمۡدِ رَبِّكَ
وَٱسۡتَغۡفِرۡهُۚ إِنَّهُۥ كَانَ تَوَّابَۢا ٣

سُورَةُ المَسَدِ — ترتيبها ١١١ — آياتها ٥

بِسۡمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحۡمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

تَبَّتۡ يَدَآ أَبِي لَهَبٖ وَتَبَّ ١ مَآ أَغۡنَىٰ عَنۡهُ مَالُهُۥ وَمَا
كَسَبَ ٢ سَيَصۡلَىٰ نَارٗا ذَاتَ لَهَبٖ ٣ وَٱمۡرَأَتُهُۥ
حَمَّالَةَ ٱلۡحَطَبِ ٤ فِي جِيدِهَا حَبۡلٞ مِّن مَّسَدِۭ ٥

## SÛREYÊ KAFÎRÛN

Sûreyê Kafîrûn şeş (6) ayet e û li Mekkê daketiye. Navê sûre ji ayeta pêşîn tê ku tê de peyva Kafîrûn dibihure, pirjimara “kafir” e ku bi ma’neya “Xwedênenas, heqîveşêr, dînbetal û gawiran” e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Bibêje: Hey gelî kafiran!

2 Ew (pût û senem)ên ku hûn îbadetê wan dikin, ez îbadetê wan nakim.

3 Ew (Xwedayê) ku ez îbadetê Wî dikim, hûn jî îbadetê Wî nakin.

4 Ez bi xwe dê ne îbadetkerê wan (pût û seneman bim) ên ku hûn îbadetê wan dikin.

5 Hûn bi xwe jî dê ne îbadetkerê wî Xwedayê bin ku ez îbadetê Wî dikim.

6 Dînê we ji we re (ez jê bêrî û dûr im) û dînê min jî ji min re (hûn jî jê bêrî û dûr in).

## SÛREYÊ NESR

Sûreyê Nesr sê (3) ayet e. Li Medîneyê daketiye. Sûre, navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de peyva Nesr derbas bûye û bi ma’neya “arîkarî” ye.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 (Resûlê min!) Dema arîkarîya Xwedê û riya fethê ji bo te hat.

2 Te jî dît ku mirov kom bi kom dikevine dînê Xwedê.

3 Vêca hingê Xwedayê xwe ji her kêmasiyê pak bidêre, Wî bişêkirîne, daxwaza lêborîna xwe jê bike. Bi rastî ew e yê her pir tobewergir (ku berê însanan dide tobê û tobeya wan dipejirîne).

## SÛREYÊ TEBBET

Sûreyê Tebbet pênc (5) ayet e. Li Mekkê daketiye navê sûre ji ayeta pêşîn tê ku tê de peyva Tebbet boriye û bi ma’neya “ziyan kiriye, şeht bûye” ye, ku ew jî nifir û beduayî ye. Hin navên dîtir ên sûre ev in: Mesed û Leheb.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

1 Her du destên Ebû Leheb hişk û şeht bibin û şeht jî bûn.

2 Serwet û qazanca ku kirî tu feyde nedayê (û ew xelas nekir).

3 Ew dê bikeve agirekî bipêt.

4 Digel jina wî jî ku ew piştîhilgira dar û strîyan bû.

5 Di stûyê wê de werîsekî hunandî û girêkdayî heye.

ترتيبها ١١٢ — سُورَةُ الإِخْلَاصِ — آياتها ٤

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

قُلْ هُوَ ٱللَّهُ أَحَدٌ ﴿١﴾ ٱللَّهُ ٱلصَّمَدُ ﴿٢﴾ لَمْ يَلِدْ
وَلَمْ يُولَدْ ﴿٣﴾ وَلَمْ يَكُن لَّهُۥ كُفُوًا أَحَدٌۢ ﴿٤﴾

ترتيبها ١١٣ — سُورَةُ الفَلَقِ — آياتها ٥

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

قُلْ أَعُوذُ بِرَبِّ ٱلْفَلَقِ ﴿١﴾ مِن شَرِّ مَا خَلَقَ ﴿٢﴾ وَمِن
شَرِّ غَاسِقٍ إِذَا وَقَبَ ﴿٣﴾ وَمِن شَرِّ ٱلنَّفَّٰثَٰتِ فِى
ٱلْعُقَدِ ﴿٤﴾ وَمِن شَرِّ حَاسِدٍ إِذَا حَسَدَ ﴿٥﴾

ترتيبها ١١٤ — سُورَةُ النَّاسِ — آياتها ٦

بِسْمِ ٱللَّهِ ٱلرَّحْمَٰنِ ٱلرَّحِيمِ

قُلْ أَعُوذُ بِرَبِّ ٱلنَّاسِ ﴿١﴾ مَلِكِ ٱلنَّاسِ ﴿٢﴾ إِلَٰهِ
ٱلنَّاسِ ﴿٣﴾ مِن شَرِّ ٱلْوَسْوَاسِ ٱلْخَنَّاسِ ﴿٤﴾ ٱلَّذِى
يُوَسْوِسُ فِى صُدُورِ ٱلنَّاسِ ﴿٥﴾
مِنَ ٱلْجِنَّةِ وَٱلنَّاسِ ﴿٦﴾

## SÛREYÊ IXLAS

Sûreyê Ixlas çar (4) ayet e û li Mekkê daketiye. Navê sûre ji naveroka sûre tê ku behsa bîr û baweriya yekdêrînê, tewhîdê dike.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

(1) Bibêje: Xwedê her yek e.

(2) Her Xwedê ye bergeha hewcedaran.

(3) Kes jê çênebûye û ew jî ji kesî çênebûye.

(4) Tu hemkûf û hevta jî jê re tun in.

## SÛREYÊ FELEQ

Sûreyê Feleq pênc (5) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de bêjeya El-Feleq derbas bûye û bi ma'neya "sibeh û beyanî" ye.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

(1) Bibêje: Ez bi Xwedayê spêdeyê (sibehê) xwe diparêzim.

(2) ji xerabî û neqenciya her afirandiyekî…

(3) Ji zerar û neqenciya şevê gava bi tekûzî tarî dibe…

(4) Ji neqenciya sêrebendên mê dema ku bi girêkan de pif dikin (û sêrê dikin)…

(5) Ji neqenciya kesê çavnebar gava çavnebariyê dike (xwe diparêzim).

## SÛREYÊ NAS

Sûreyê Nas şeş (6) ayet e. Li Medîneyê daketiye. Lê belê li gorî hin rîwayetên din jî li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayetên 1'em, 2'em, 3'yem, 5'em û 6'em girtiye ku di wan de peyva Nas derbas bûye û bi ma'neya "mirov" e.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvan ê Dilovîn.**

(1) Bibêje: Ez bi Perwerdegarê mirovan xwe diparêzim…

(2) Padîşah û serwerê mirovan…

(3) Xwedayê mirovan…

(4) Ji ber neqenciya (şeytan)ê tasawasker, ê pir revoke (dema ku navê Xwedê tê gotin)…

(5) Ew ê ku şubhe û tasewasê dixe dilên mirovan (û xerabiyê li ber dilê wan şîrîn dike)…

(6) Ji şeytanên cinî û şeytanên insî (xwe diparêzim).

# EV HINEK PIRSÊN GIRÎNG IN DI JIYANA MIROVÊ MUSILMAN DE

**1 Mirovê musilman aqîda (baweriya) xwe ji kû digre?** Mirovê musilman baweriya xwe ji kitêba Xwedê û suneta sehîh a Pêxemberê wî digre, ew pêxemberê ku ji kîsê xwe xeber nade; suneta wî "***her wehyeke ku jê re hatiye wehî kirin***". Ev jî pêwist e ku li gorî fehma sehabe û fehma selefê salih be (*Xwedê ji wan razî be).*

**2 Deme em bikevin qayişkêşanê em ê bi çi ji hev safî bibin?** Dema em bikevin qirika hev em ê vegerin bal şer'a şerîf. Di vê de hukim bi bal kitêba Xwedê û suneta Resûlê wî ve ye. Mîna ku Xwedê gotiya: "***Eger hûn di tiştekî de bihev ketin meselê bibin bal Xwedê û Resûlê wî ve***". Pêxember (Selat û selam li ser bin) jî gotiye: *Ez di pey xwe re du tiştan dihêlim; heyanî hûn bi wan bigrin û bibin peyrewên wan hûn riya xwe şaş nakin, ew kitêba Xwedê û suneta Resûlê wî ne*. ***El-Muwetta***

**3 Di roja qiyametê de desteka rizgarbûyî kî ne?** Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje: *..umeta min bi bal heftê û sê cemaetan ve ji hev tê qetandin, ji bilî yek cemaetê, yê din tev di êgirde ne*. Sehabiyan got: Ew kîjane hey qasidê Xwedê? Pêxember got: "*Ew, riya ku ez û sehabeyên min li serê ne.*" ***Ahmed*** Naxwe; cemaeta heq, ya ku Pêxember û sehabeyên wî li serê ne. Vêca; eger tu bixwaze emelê te qebûl bibe û tu jî rizgar bibê lazim e tu bibê peyrewê suneta pêxember (Selat û selam li ser bin) û lazim e tu xwe ji bidetkariyê dûr bikê.

**4 Şertên qebûlkirina emelê salih çi ne?** Şertên wê; **1-** Baweriya bi Xwedê û tewhîda wî ye. Ji merivê muşrik emelê wî qebûl nabe. **2-** Îxlas e; ku kar û kiryarên xwe ji bo riza Xwedê bike. **3-** Di kar û kiryarên xwe de mutabeeta Pêxember (Selat û selam li ser bin) bike; bi rewşekî wisa ku emelê wî li gorî ya ku pêxember (Selat û selam li ser bin) anîye bê. Naxwe lazim e îbadet li gorî şer'a Xwedê be. Eger yek ji van şertan tunebê emel lê tê vegerandin. Xwedê wiha ferman kiriye: **"*Em kar û kiryarên ku wan kirin tînin û em mîna tozê wê li ber ba dixin*."**

**5 Mertebeyên dîn çi ne?** Mertebeyên dîn sisê ne: Îslam, Îman û Îhsan e.

**6 Îslam çi ye û çend ruknên wê hene?** Îslam, bi baweriya tewhîdê tu teslîmî Xwedê bibê, bi îbadetkirinê xwe jê re bitewînê û xwe ji şirk û ehlê şirkê bêrî û dûr bikê. Ruknên wê (5) pênc in. Pêxember (Selat û selam li ser bin) di fermodeye xwe de bahsa wan kiriye; "Dînê îslamê li ser pênc riknan hatiye avakirin. **1-** Meriv şehdeyî bi de ku ji Xwedê pê ve tu mabûdê bi rastî tun in û şehdeyî bide ku Muhemmed Qasidê Xwedê ye. **2-** Kirina nimêjê ye. **3-** Dayina zekatê ye. **4-** Çûyîna heccê ye. **5-** Girtina rojiya Remezanê ye." ***Muttefequn aleyh***

**7 Îman çi ye û çend ruknên wê hene?** Îman, Baweriya dil e, gotina ziman e û emelê dest û lingen e. Bi îbadetkirinê zêde dibe û gunehkariyê kêm dibe; Xwedê ferman dike: "***Ew Xwedayê ku aramiyê dixe dilên mumînan da ku îmana wan xurt û zêde bibe***." Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje: *Îman heftê kusûr perçe ye; ya herî baş gotina "Laîlahe îllellah"e û ya herî kêm; tişta eziyetê digihîne mırovan ji rê bidê alî. Fihêtî û şermîkarî jî perçeyek ji îmanê ye*. ***Muslim***

Di mewsimê xêran de kirina îbadetê ku merivê musilman di xwe de mulaheze dike û terka îbadetê li cem kirina gunehan vê rewşê ditekizênê. Xwedê Teala dibêje: "***Birastî qencî gunehan xîşdikin***". Riknên Îmanê şeş in: **Pêxember (Selat û selam li ser bin) ev her şeş di fermodeya xwe de wiha gotine; 1-** Baweriya bi Xwedê. **2-** Baweriya bi

melaîketên Xwedê. **3-** Baweriya bi kitêbên Xwedê. **4-** Baweriya bi qasidên (resûlê) Xwedê. **5-** Baweriya bi roja axretê. **6-** Baweriya bi qederê; xêr û şerê wê. ***Buxarî***

**8 Maneya "Laîlahe îllellah" çi ye?** Ma'na "Laîlahe îllellah" ew e; ku meriv haqê îbadetjêrekirinê nedê xeyrê Xwedê; bes ji bo Xwedê tenê heq bikê.

**9 Ma gelo Xwedê bi me re ye?** Belê. Xwedê, bi zanîna xwe, bi sehkirina xwe, bi dîtina xwe, bi parêziya xwe, bi têgihiştina xwe, bi hêz û vîna xwe bi me re ye. Lê belê heçî ku zatê wî ye; vêca ew tevlî zatê mexlûqan nabe û tu mexlûq bi zatê Xwedê tênagihin.

**10 Ma gelo mimkun e ku Xwedê bi çavan were dîtin?** Alimê musilmanan îttîfaq kirine ku ne mimkune Xwedê li dinyayê bê dîtin û îttifaq kirine ku bawermend li axretê, li heşrê û li cennetê Xwedê dibînin. Xwedê dibêje: " ***Wê rojê (a qiyametê) hin rûdêm hene bi şewq in, bi bal Rebbê xwe ve di meyzênin*.**"

**11 Feyda naskirina nav û sifatên Xwedê çi ye?** Birastî ferza ewil ya ku Xwedê li ser bendayê xwe ferz kirî naskirina Xwedê ye. Dema mirovan Xwedê naskir bi heqî îbadetê wî dikin. Xwedê wiha dibêje: "***Naxwe bizanibe: Birastî jî rewş ev e; Ji Xwedê pê ve tu mabûdê heq tun in û daxwaza bexşandina gunehên xwe bike*.**" Vêca; dema Xwedê bi zêdedilovanî û pirbirehmî bê gotin ev hêviyê misoger dikê, dema bi ezabdijwarî bê gotin ev tirsê misoger dikê û dema ew bi zatê xwe tenê bi qencîbexşî bê gotin ev şukrê misoger dikê.

**Armanc ji îbadetkirina bi nav û sîfatên Xwedê:** Misogeriya zanînê bi wan e, têgihiştina wateya wan e û emelkirina bi wan e. Hinek ji nav û sîfatên Xwedê salixdayîna bi wan bende pê tê pesindayîn, mîna; sifetê zaninê, sifetê rehmet û edaletê. Hi ji wan dema bende xwe bi wan salix bide bi nebaşî tê wesifkirin, mîna; xwedatî, zordarî û xwemezindêrî. Ji bende re hin salix hene ku bende bi wan bi başî tê wesifdayîn û bi wan tê fermanberkirin, mîna; îbadetkarî, hewcedarî, xweşikandî, xwestekî û herwiha. Lê belê wesifdayina Xwedê bi van salixan memnû'e. Xoşevistirê mirovan bi bal Xwedê ve ew ê ku bi wan salixên Xwedê jê hez dike xwe salix bide. Ji mirovan yê herî hêrslêbûyî ewê ku bi wan salixên ku Xwedê naxwazê xwe pê salix bide.

**12 Esma'ul-husna (navên Xwedê yên herî xweşik) kîjan in?** Xwedê Teala dibêje: "***Ji Xwedê re navên herî xweşik hene; vêca bi wan jê daxwaz bikin***". Bi cih bûye ku Pêxember (Selat û selam li ser bin) wiha gotiye: "***Birastî ji bo Xwedê not û neh; ji sedî yek kêm nav hene, ew kesê wan bibêje; dikeve cennetê de***." ***Muttefequn aleyh***

**Hejmartina wan sê rewşan di xwe de digre; 1-** gotina peyvên wan û hejmara wan e. **2-** Têgihiştina mana û wateya wan û baweriya pê bi wan e. Deme bende bibêje: El-Hekîm. Wateya wê ev e ku wî tevekê rewşa xwe sipartiye Xwedê. Lewra tevekê rewşa wî li gorî hikmeta wî ye. **3-** Bi navên Xwedê jê daxwazê bikê. Bibêjê: Hey zatê pir settar, me bi sitirêne û hey zatê pir keremdar, li me keremê bike. Xwedê Teala derbarî nebî Suleyman de wiha dibêje: "(Suleyman wiha duakir:) "***Xwedayê min! Li min bibore, mulk/hukimdariyeke wisa bide min ku piştî min tu kes negihîje wê. Bêguman her tu yî yê dayende*.**"

**Ew kesê ayetên Qur'anê û suneta sehîh lêbikole ew ê bikaribe wan li hev kom bike; navên Xwedê ev in.**

| Nome | Esma,ul-Husna (Navên Xwedê yên herî xweşik) |
|---|---|
| اللّٰه Ellah | Li ser tevekê mexlûqê xwe xwedanê ulûhiyet û ubûdiyetê ye. Yanî; her ew e yê ku îbadet jê re tê kirin, ew e yê ku jê re tê kêmkirin, ew e yê ku jê re tê tewandin, ew e yê ku ruku û sicud jê re tên birin. Tevekê texlîtên îbadetê her jê re têne kirin. |
| الرّحمن Er-Rehman | Ev navekî ku terxanê bi Xwedê ve ye, ji bilî Xwedê kes pê nayê navkirin. Amajeyî bal ferehiya rehmeta Xwedê ve dike û ev rehmet şamilî ser tevekê mexlûqan tê. |
| الرّحيم Er-Rehîm | Ewê ku li axretê li bawermendan tê rehmê; li wan dibûre, wan dibe cihê xweşî û nimetan……. |
| العفو Al Áfuu | **El-Efiwu:** Ewê ku gunehan xiş dike, lê dibihur e û li serê nade ezabê digel ku ezab jî heq kiriye . |
| الغفور Al Ghafur | **El-Xefûr:** Ewê ku gunehê gunehkaran di sitirîne, wan nahetikîne û li serê wan nede ezabê. |
| الغفّار El-Xeffar | Ewê ku li ser bendeyê xwe yê gunehkar ê lêborînxwaz pir lêbihur e. |
| الرءوف Er-Reûf | Ewê ku rehm û dilovaniya wî pir zêde ye. Di dinyayê de ji bo hemî mirovan e û li axretê ji bo hinekan e ku ew weliyê Xwedê yê bawermend in. |
| الحليم El-Helîm | Ewê ku lezê li ezabdayîna bendeyê xwe nake digel ku dikare wan bide ezabdayîn jî. Belkî li wan dibore û dema ku daxwaza lêborîna gunehên xwe bikin gunehên wan dibe. |
| التّواب Et-Tewwab | Ew ê ku ji bendeyên xwe yê bivê ji bo tobekirinê tewfîqê dide û ji wan tobê qebûl dike. |
| السِّتّير Es- Sittîr | Ew ê ku sitarê tavêjê ser bendeyê xwe û di nav xelkê de wî nahetikîne. Ew ê ku ji bendeyên xwe hez dike ku ew gunehê xwe û yê xelkê veşêre û her wisa şermegeha xwe bi sitirîne. |
| الغنى El-Ğenî | **:** Ew ê ku qet ne hewceyî tu yekî ji mexlûqê xwe ye, ji bo ku ew bi xwe bêkêmasî ye û xwedanê salixên kemalê ye. Hemî mexlûq mihtacê wî ne û hewcedarê bal qencî û arîkariya wî ve ne. |
| الكريم El-Kerîm | Ew ê ku qenciya wî pir, mineta wî û dayîna wî pir e. Ew, ya bivê ji yê ku bivê çawa bivê, bixwestin û bêxwestin dide, li gunehan dibore û kêmasiyan diveşê re. |
| الأكرم El-Ekrem | Ew ê di qencî û dayinê de gihaye dawiya merdiyê, vêca di vê de kes hevtayê wî tun in, tevekê qenciyê jê ye, bi kerema xwe bawermendan pê padaş dike, muhletê dide yên berê xwe zivartiye û bi edaleta xwe wan dikişênê hesabdayinê. |
| الوهّاب El-Wehhab | Ew ê ku pir xwedankerem û qencî ye, bê pere û pûl qenciyê dike û bê xwestin qenciyê dike. |
| الجوّاد El-Cewwad | Ew ê ku dayîn û xêra wî li ser mexlûqê wî pir e û ji bo yên ku pê bawerî anîn e; ji comerdî û qenciya wî para herî mezin heye. |
| الودود El-Wedûd | Ew ê ku hej dostê xwe dike, hezkirina xwe bi lêborîna gunehan û qenciyê bi bal wan ve dide, vêca ji wan razî dibe û kiryarên wan qebûl dike û li ser erdê wan digerîne ji yên birûmet. |
| المعطى El-Mu'tî | Ew ê ku tişta bivê ji xizna xwe dide kesê ku ji mexlûqê xwe bivê, para herî pir dide weliyên xwe û ew ê ku li gorî xulqiyet û şeklê wan qencîyê li her tiştî dike. |
| الواسع El-Wasî' | Ew ê ku salixên wî pir in ku tu kes nikare wî bi heqî salix bide, ew ê ku mezinahî û hukimraniya wî pir fereh, lêborîn û dilovaniya wî pir fereh, qencî û kerema wî pir mezin e. |
| المحسن El-Muhsin | Ew ê ku di zatê wî de, di navên wî de, di salix û karên wî de qencîkariya bêkêmasî her jê re ye. Her tişt rind çêkiriya û qencî bi mexlûqê xwe kiriye. |
| الرّازق Er-Raziq | Ew ê ku rizqê hemî mexlûqan dide û beriya xulqandina alemê rizqê wan teqdîr kiriya û buye kefilê kemilandina rizqê wan, her çiqas piştê demekê bê jî. |

| | |
|---|---|
| الرَّزَّاقُ<br>Er-Rezzaq | Ew ê ku ji bo bendeyê xwe pir riziqdar e. Xwedê ye; yê ku berî mexlûq jê bixwazin dide wan, belkî; ew rizqê wan dide digel ku ew bêemriya wî jî dikin. |
| اللَّطِيفُ<br>El-Letîf | Ew ê ku zanayê bi hûr û dizîyê her rewşê ye, vêca tiştekî bi dizî ji berê ne xefiye. Ew feyde û qenciyê ji cihekî ku ew bîra wê nabin digihîne mexlûqê xwe. |
| الخَبِيرُ<br>El-Xebîr | Ew ê ku zanîna wî nava her tiştî û veşareyê wan dizane ka çawa derveyên wan dizane. |
| الفَتَّاحُ<br>El-Fettah | Ew ê ku deriyê xezineya milkê xwe, deriyê xezineya dilovanî û rizqê xwe, tişta jê bivê, li gorî hikmet ü zanîna xwe ji kesê ew bixwazê re vedike. |
| العَلِيمُ<br>El-'Elîm | Ew ê ku zanîna wî dor li her berçav û veşareyan, raz û eşkereyan, alema jorîn û jêrîn, dema bûrî, dema têdeyî û dema werê girtiye û tiştek li ber wî veşartî û nehan namîne. |
| البَرُّ<br>El-Berr | Ew ê ku ji mexlûqê xwe re xwedan qenciyên pir e. Ew qenciyê dide vêca kes nikare qenciyên wî bi hejmêre. Ewê ku di soza xwe de rastgo ye, soza xwe bicih tîne. Ewê ku li bendeyê dibore, arîkariya wî dike, wî diparêze û jê hindikî qebul dike û wê jê re zêde dike. |
| الحَكِيمُ<br>El-Hekîm | Ew ê ku her tiştî di cihê wê de datînê û di tedbîra wî de tu kêmasî û şemitandin tune ye. |
| الحَكَمُ<br>El-Hekem | Ew ê ku di navbera mexluqê xwe de bi dadperwerî hukim dike; îcar li tu kesî zilmê nake û ewê ku kitêba birûmet hinartiye da ku di navbera xelkê de bibe hekem. |
| الشَّاكِرُ<br>Eş-Şakir | Ew ê ku kesê ibadetê wî bike salix û pesnê wî dide, padaşa ibadetê wî dide çiqas ew hindik be jî, li hemberî şêkiriya qenciyê; li dinyayê qenciya xwe zêde dike û li axretê jî xêrê didiyê. |
| الشَّكُورُ<br>Eş-Şekûr | Emelê hindik li balê zêde dibe û padaşa wan qat bi qat zêde dide wan. Vêce şêkiriya Xwedê ji ebdê wî re ku li hemberî qenciya wan xêrê dide wan û emelê wan qebul dike. |
| الجَمِيلُ<br>El-Cemîl | Ew ê ku di zatê xwe de, di navên xwe de, di sifatên xwe de û di kar û barê xwe de xweşik e, xweşikayiyeke mutleq bê şekl û bê awa. Çiqas xweşkayiyek di mexluqê wî de hebe her ew ji cem wî ye. |
| المَجِيدُ<br>El-Mecîd | Ew ê ku di erd û asîmanan de her jê re ye fexr û kerem, deshelatî û bilindahî. |
| الولِيُّ<br>El-Weliyyu | Ew ê ku li ser rewşa bendeyên xwe, li ser cîbicîkirina hukimraniya xwe rêvebir e û ew ê ku arîkar û piştevan e ji bo dostên xwe. |
| الحَمِيدُ<br>El-Hemîd | Ew ê ku li ser zat, nav, sîfat û kar û barên xwe layîq û babetê hemd û sena ye. Ew ê ku di ferehî û tengezariyê, di tundî û xweşiyê de hemdê wî tê kirin. Ew ê ku bê sedem û sebeb babet e ji bo hemd û senayê. Lewra; yê ku bi kemal û tekûzî hatiye salixdayin her ew e. |
| المَوْلَى<br>El-Mewla | Ew ê ku perwerdegar e, xwedi ye, mezin e, arîkar û piştevan e ji bo bawermendan. |
| النَّصِيرُ<br>En-Nesîru | Ew ê ku di her kar û barî de arîkariya kesê bivê dike; vêca kesê ew jê re arîkar be zora wî nayê birin û kesê ku ew têk bibê arîkariya wî nayê kirin. |
| السَّمِيعُ<br>Es-Semî'u | Ew ê ku bi gotina pistepistî û ya bi dizî, bi gotina eşkere û ya xuya bihîzer e; belkî bi tevekê dengan ew çiqas hûr û gir bin jî û ewê ku bersiva lavakaran dide. |
| البَصِيرُ<br>El-Besîru | Ew ê ku di alema nelberçav û ya liber çav de bi hemî heyînan bîner û dîdevan e, her çiqas ew veşartî û aşkere, hûr û gir bin jî. |
| الشَّهِيدُ<br>Eş-Şehîdu | Ew ê ku li ser mexluqê xwe hazir û zêrevan e. Li ser xwe bi yekitî û dadperweriyê şehdeyiyê dide û dema bawermend wî yek didêrin li ser rastîtiya wan şehdeyiyê dide û ji bo pêxember û melaiketan jî şehdeyiyê dide. |
| الرَّقِيبُ<br>Er-Reqîbu | Ew ê ku bi mexluqên xwe dizane, kar û xebata wan dihejmêre, vêca ne çavşikandina meyzekerî û ne jî xeyala di dil de li ber winda nabe. |

| | |
|---|---|
| الرَّفِيقُ<br>Er- Refîq | Ew ê ku di kar û barê xwe de pir pi birehm e, di çêkirin û hukmê xwe de hêdi hêdî û hinbihin e. Bi bendeyê xwe re birehm û nermî muamele dike, vêca ya hêza wan li ser tune wan pê berpirsyar nake. Xwedê ji bendeyê xwe yê birehm hezdike. |
| القَرِيبُ<br>El-Qerîb | Ew ê ku bi zanîn û qudreta xwe nêzîkî tevekê mexluqê xwe ye û bi qencî û arîkariya xwe jî nêzîkî bendeyê xwe yê bawermend e. Digel vê jî li ser Erşê xwe ye û zatê wî tevlî mexlûqan nabe. |
| المُجِيبُ<br>El-Mucîb | Ew ê ku bersiva bergerîn û banga bendeyên xwe li gorî zanîn û hikmeta xwe dide. |
| المُقِيتُ<br>El-Muqît | Ew ê ku hemî qût û riziq çêkirin, kefîlê dayina rizqê mexluqê xwe ye û li ser rizq û emelê ibadan û li ser emelê wan bêkêmasî diparêzê. |
| الحَسِيبُ<br>El-Hesîb | Ew ê ku ji bo bendeyên xwe ji rewşa dîn û dinya wan ya ku ji bo wan giring e besî wan e û ji yên ku bawerî pê anîne paya mezin ji bo wan e û ewê ku li dinyayê li ser kirinên bendeyên xwe hesabgêr e. |
| المُؤْمِنُ<br>El-Mu'min | Ew ê ku bi şehdeyiya xwe qasidên xwe û peyrewên wan rastdêran e û li ser rastiya wan mûcîze û delîl şandine, her çiqas di dinya û axretê de êminî û ewleyî hebe her wî daye, her ew e yê ku bawermend êmin dêrane ku roja qiyametê zilmê li wan neke, wan nede ezabê û wan bi hewlê roja qiyametê netirsîne. |
| المَنَّانُ<br>El-Mennan | Ew ê ku li ser mexluqê wî dayîna wî pir, qenciya wî mezin û kerema wî berfereh e. |
| الطَّيِّبُ<br>Et-Teyyîb | Ew ê ku paqij û saxlem e ji her eyb û kêmasiyê, ewê ku her jê re ye xweşkayî û kemaleta bêsinor, Xwedê, qenciya wî li ser mexluqê wî pir e, ji emel û sedeqan ku ne yê rind û keşxe bin, ne helal û ji bo wî bin ji bendeyê xwe qebul nake. |
| الشَّافِي<br>Eş-Şafî | Ew ê ku dil û bedenan ji nexweşiyên wan rehet dike. Di destê ibadan de tu derman tune ji bilî ya ku Xwedê bi dest wan ve bîne. Heçî ku şîfa ye ew tenê bi destê Xwedê ye. |
| الحَفِيظُ<br>El-Hefîz | Ewê ku bi kerema xwe bendeyên xwe yê bawermend û emelên wan diparêze û hemî mexlûqatan bi qudreta xwe wan xwedî dike û bi kerema xwe diparêze. |
| الوَكِيلُ<br>El-Wekîl | Ew ê ku kefiliya alemê dike û afirandin û rêveberiya wan girtiye ser xwe. Naxwe; yê ku ji hêla çêkirin û berdewamkirin ve ji mexluqan berpirs her ew e. Ew berpirsê bawermenda ne; ew bawermendên ku beriya xebatê rewşa xwe disipêrin wî, dema di dixebitin jê arîkariyê dixwazin, piştî arikariya Xwedê pesn û spasiya wî dikin û piştî bi belaê hatin ceribandin bi ya hatî serê wan qayil in. |
| الخَلَّاقُ<br>El-Xellaq | Ew ê ku xulqkirin û afirandina wî pir e. Xwedê, afirandina wî her berdewam e û ew li ser vî wesfê mezin her yê berdewam be. |
| الخَالِقُ<br>El-Xaliq | Ew ê ku ji tuneyî hemî mexluq çêkirine bêyî ku berê mînakek hebê. |
| البَارِئُ<br>El-Barî | Ew ê ku ji mexluqatan ya teqdîrkirî afirandiye û derxistiye alema heyînê. |
| المُصَوِّرُ El-Mussewir | Ew ê ku mexluqê xwe li ser wî şiklê ku wî ji wan re xwestiye li gorî hikmet, zanîn û dilovaniya xwe hilbijartiye. |
| الرَّبُّ<br>Er-Rebb | Ew ê ku mexluqê xwe bi qenciyên xwe perwerde dike û hin bi hin wan mezin dike. Ewê ku bendeyê xwe yê bawermend bi ya ku dilê wan çaksaz dike perwerde dike. Her ew e yê afirinêr yê ku xwediyê her tiştî û yê ku şehinşah e. |
| العَظِيمُ<br>El-'Ezîm | Ewê ku mazinatiya bêsînor di zatê wî de, di navên wî de û di sîfatên wî de her jê re ye. Ji ber vê yekê ye; wacib e li ser mexluqan ku wî mezin bidêrin, wî bilind bidêrin û ku emr û nehyê wî jî mezin bigrin. |
| القَاهِرُ<br>El-Qahir | Ewê ku bendeyên xwe zelîl dike, mexluqê xwe kole dike, li ser wan bilind dibe û desthelatekî wisa ye ku stu jê re tên danîn û rûdêm bi bal ve tên dayîn. |

| | |
|---|---|
| القَهَّارُ El-Qehhar | Watezêdeya qahir ê ye. Qahir, yê ku serdest û têkbir e. Qehhar, yê ku zêde serdest û têkbir e. |
| المُهَيْمِنُ El-Muheymin | Ew ê ku bi rewşa tiştê radibe, wê diparêze, li serê şahid e û li ser wan zêrevan e. |
| العَزِيزُ El-’Ezîz | Ew ê ku tevekê wateyên izzetê jê re ye; serdestiya quwetê, vêca yê wî têk bibe tune, serdestiya nehiştinê, îcar ne hewceyê tu kesî ye, serdestiya têkbirin, û serkeftinê naxwe bê destûra wî tu tişt xwe naleqe. |
| الجَبَّارُ El-Cebbar | Ew ê ku cîbicîkirina meramê her jê re ye, tevekê mexluqan jê re naçar in, ji mezinahiya wî re tewandî ne, ji fermana wî re xweşikandî ne. Ew yê dilşikestî dicebirînê, yê feqîr zengîn dike, yê tengezar destfereh dike û yê nexweş sax dike û xwedanbela belayê li ser dihilîne. |
| المُتَكَبِّرُ El-Mutekebbir | Ewê ku mezin e, ewê ku ji her nebaşî û kêmasiyê tê mezindêran, ew ê ku ji zilma îbadên xwe bilind e, ewê ku têkbirê zaliman e, yê ku bi fexr û mezinahî hatiye salixdan her ew e û yê ku li hemberî mezinahî û hukimraniya wî rabe pişta wî dişkîne û dide ezabê. |
| الكَبِيرُ El-Kebîr | Ew ê ku di zatê xwe de, di sîfatên xwe de û di karê xwe de mezin e. Jê mezintir tu tişt tune ye, digel ku li ber ezemet û celaleta wî xeynê wî her tişt biçûk e. |
| الحَيِيُّ El-Heyyiyu | Ew ê ku şermeke wisa jê re heye ku layiqê mezinahiya zatê wî ye û babetê mezinahiya hukimraniya wî ye. Naxwe; şerma Xwedê şerma keremê, ya qenciyê, ya comerdî û mezinatiyê ye. |
| الحَيّ El-Heyy | Ew ê ku jiyana tekûz a berdewamî û mayîndeya ku ne serî ne jî dawî jê re heye her jê re ye. Her çiqas jiyaneke di heyînê de hebe her ew ji cem wî ye. |
| القَيُّومُ El-Qeyyûmu | Ew ê ku hebûna wî bi wî ye, yê ku ne hewceyê mexluqê xwe ye. Ew ê ku lihevragirê çiqas yên di erd û asîmanan de ye, vêca ew hewcedar û mihtacê bal ve ne. |
| الوَارِثُ El-Warîsu | Ew ê ku piştî tunebûna mexluqan mayînde ye, tevekê tiştan piştî mirina xwediyên wan divegerin bal wî ve, her çiqas tiştê di destê me de ew emanet in; rojekê dê vegerin bal xwediyê xwe ve. |
| الدَّيَّانُ Ed-Deyyanu | Ew ê ku mexluqan serî jê re danîne û xwe jê re çemandine, ew ê ku bendeyê xwe li ser kar û kiryarên ku kirin wan padaşt dike; eger qencî kiribin wê zêde dike û eger xerabî kiribin ezab dide, yan jî li wan dibore. |
| المَلِكُ El-Meliku | Ew ê ku fermandayîn, qedexekirin û serkeftin jê re ye, yê ku di mexluqê xwe de bi kirin û fermana xwe teserufatî dike; naxwe tu qenciya kesî li serê tune ye di lihevragirtin û îdarekirina milkê wî de. |
| المَالِكُ El-Maliku | Di eslê xwe de Xwedîyê milk ew e û heqê wî ye, vêca di dema ewil a ku mexluq çêkirin û di dawî de dema mexluq tune bibin jî xwedanî û rêveberî her jê re ye; ne ji tu kesî din re ye. |
| المَلِيكُ El-Melîku | Ew navek e; amajeyî bal xwedanî û rêveberiyeke bêqeyd û şert dike: Peyva “El-Melîk”ê ji peyva “El-Melik”ê watebartir e. |
| السُّبوحُ Es-Subbûhu | Ew ê ku ji her eyb û kêmasiyê pak û dûr e; lewra, her jê re ne salixên kemal û cemalê. |
| القُدّوسُ El-Quddûsu | Ew ê ku bi her awayî ji hemî eyb û kêmasiyan pak û dûr e. Ev jî; bi sedem ku ew bi tenê xwediyê salixên kemala mutleq e, vêca hevta û hemkûf jê re nayên girtin. |
| السَّلامُ Es-Selamu | Ew ê ku di zatê xwe de, di navên xwe de, di sîfatên xwe de û di kar û barên xwe de ji hemî kêmasiyan parastî ye. Her çiqas selametîyek ku di dinya û axretê de hebe ew jê ye. |
| الحَقُّ El-Heqqu | Ew ê ku di hebûna wî de şik û şubhe tune, di nav û sifatên wî de û di ulûhiyeta wî de jî tune. Vêca yê bi heqqî îbadet jê re tê kirin ew e; ji wî pê ve yê ku jê re îbadet bi heqqî bê kirin tune. |

| | |
|---|---|
| المُبِينُ<br>El-Mubînu | Ewê ku rewşa wî di yekitiya wî de, di hikmeta wî de û di rehmeta wî de aşkere ye. Xwedê ye yê ku rêka xilasiyê ji bendeyê xwe re eşkere dike da ku li pey herin û yê ku rêka şaşiyê eşkere dike da ku xwe jê bidin paş. |
| القَويّ El-Qewîyyu | Ew ê ku her jê re ye qudreta bê qeyd û şert digel meşîeta bêkêmasî. |
| المَتِينُ<br>El-Metînu | Ew ê ku di hêz qudreta xwe de herî dijwar e. Di kar û barê wî de tu tadayî, bargiranî û tab nagihijiyê. |
| القَادِرُ<br>El-Qadiru | Ew ê ku li ser her tiştî karaye, di erd û asîmanan de tu tişt wî naçar nahêle, ew e yê ku her tiştî teqdîr dike. |
| القَدِير<br>El-Qedîru | Ev bi wateya “Qadir”î tê. Lê belê peyva “Qedîr”ê di pesindayîne Xwedê de zêde watebartir e ji peyva “Qadir”ê. |
| المُقْتَدِرُ El-Muqtediru | Navekî Xwedê ye, amajeyî ser zêdeyiya qudreta Xwedê di bicihanîna muqedderatan û çêkirina wan de li gorî zanîna Xwedê ya ezelî. |
| العَلي<br>El-’Eliyu<br>الأعْلَىEl-E’la | Ew ê ku rewşa wî bilind e, serdestiya wî bilind e û zatê wî bilind e. her tişt di bin serdestiya wî û hukimraniya wî de ye, tu tişt di ser wî re tuneye. |
| المُتَعالُ El-Mute’alî | Ew ê ku her tişt li pêşberî bilindahîya bûye zelîl buye, bê qeyd û şert tu tişt di ser re tuneye; belkî her tişt di bin re ye, di bin serdestiya wî û hukimraniya wî de ye. |
| المُقَدِّمُ El-Muqeddimu | Ew ê ku tiştan dide pêş û li gorî daxwaz û hikmeta xwe di cihê wan de datîne. Hin mexluqên xwe li gorî zanîn û qenciya xwe dide pêşiya hinekan. |
| المُؤَخِرُ El-Muexxiru | Ew ê ku eşya di cihên wan de datîne û bi hikmeta xwe ya bivê dide paş û ya bivê dide pêş. Ezab li ser bendeyê xwe diwexirênê da qene tobe bikin û lêvegerin. |
| المُسَعِّرُ El-Muse'îru | Ew ê ku nirxê tiştan, cihê wan û bandora wan zêde dike yan jî kêm dike, vêca tişt li gorî hikmet û zanîna wî buha yan jî erzan dibin. |
| القَابِضُ<br>El-Qabid | Ew ê ku erwahan (giyanan) distîne û ew ê ku bi hikmet û qudreta xwe rizqan ji yên ku bivê digirê da ku wan pê biceribênê. |
| البَاسِطُ<br>El-Basit | Ew ê ku bi comerdî û kerema xwe rizqê ibadên xwe fereh dike, vêca bi gorî ku hikmeta wî dixwaze bi vê dayinê wan diceribênê û bi tobê destê xwe dirêjî yê ku guneh kirî dike. |
| الأوَّلُ<br>El-Ewwel | : Ewê ku berî wî tiştek tune bûye, belkî tevekê mexluqata bi çêkirina wî peyda bune. Heçî ku Xwedê ye ji hebûna wî re tu despêk tuneye. |
| الآخِرُ<br>El-Axir | Ew ê ku piştî wî tiştek namîne, naxwe ew herheyî ye û çiqas tiştên li ser erdê nabûd in, paşê vegera wan bi bal ve ye û ew her baqî ye. |
| الظَّاهِرُ<br>Ez-Zahir | Ew ê ku di ser her tiştî re ye, vêca tiştek jê bilindtir tune, ew ji her tiştî re serdest e û dor li wan girtiye. |
| البَاطِنُ<br>El-Batin | Ew ê ku ji bilî wî tiştek tune, naxwe; ew nêzîkê mexluqê xwe ye, zanayê bi wan e û di dinyayê de ji ber çavên wan ew perdekiriye (bi çavan nayê dîtin). |
| الوِتْرُ<br>El-Witir | Ew ê ku yek e; tu hevta û şerîk jê re tun in û ew ê ku bi tenê ye; tu hemkûf jê re tun in. |
| السَّيِّدُ<br>Es-Seyyîd | Ew ê ku li ser mexluqê wî mezinahîya bê qeydu şert jê re ye, vêca ew xwediyê wan e, perwerdegarê wan e û ew mexluqê wî ne, bendeyê wî ne. |
| الصَّمَدُ<br>Es-Semed | Ew xwedanekî wisa ye ku di xwedaniyeta xwe de kemiliye. Ew ê ku mexluq di tevekê hewceyîyê xwe de qesda wî dikin, bi sedem ku hewcedariya wan bi bal ve mezin e; vêca ew xwarinê dide û jê re xwarin tune ye. |
| الوَاحِدُ<br>El-Wahid<br>الأحَدُ El-Ehed | Ew ê ku bi tevekê salixên tekûz û kâmil ên bêqeyd û şert yek û tek e; tu hevpişk hevpişkiyê di wan de nakin û tu hemkûfê wî tun in. Ev rewş, bes jê re bi tenê îbadetê misoger dikê; vêca di îbadetê de tu şerîkê wî tun in. |
| الإلَهُ<br>El-Îlah | Ew ê ku bi heqqî îbadet jê re tê kirin, ew ê ku ew bi tenê babet e ku jê re îbadet bêkirin; ne ğeyrê wî. |

**13 Di navbera navên Xwedê û sîfatên wî de ferq çî ye?** Navên Xwedê û sîfatên wî di xweparêzî û di sondxwarina bi wan de muşterek in. Lê belê di navbera wan de hin cudahî hene. Yên herî giring ev in:
**1-** Durist e ku meriv bi navên Xwedê ebdînî û dua bike; lê belê merev nikare bi sîfatên wî bike. Mînaka navkirina bi ebdîniyê: **a-** Ya bi navan, wekî Abdulkerim, ev durist e. **b-** Ya bisîfatan, wekî Abdulkerem, ev nedurist e. Mînaka duaya bi navan: Ya Kerîm, ev durist e. Mînaka duaya bi sîfatan: Ya keremellah, ev nedurist e.
**2-** Ji navên Xwedê sîfet têne çêkirin. Mînak: Er-Rehman nav e, Rehmet jê hatiye çêkirin ku ew sîfet e. Heçî ku sîfatên Xwedê ne ji bilî navên ku warid bûne, nav ji wan nayên çêkirin. Vêca “El- istiwa” a ku sifet e ew navê ku “mustewî” ye jê nayê çêkirin.
**3-** Birastî navên Xwedê yên ku warid nebûyîn ji ef'alê (kirinên) wî nayên çêkirin. Naxwe “El-ğedeb” ji kirinên Xwedê ye, vêca nayê gotin ku “El-ğadib” navê Xwedê ye. Heçî ku sifetê Xwedê ne ji kirinên Xwedê têne çêkirin; “El-ğedeb”a ku sifet e em ji bo Xwedê diçespênin. Lewra; El-ğedeb ji kirinên Xwedê ye.
**14 Wateya baweriya bi melaiketan çî ye?** Wateya wê, merev bi awakî binbir bibêjê ku ew hene. Xwedê, ji bo ku ew jê re ibadet bikin û fermanên wî bicih bînin afirandine. Xwedê ferman dike: “***(Na) belkî firîşte bendeyên Xwedê yên rûmetdar in. Ew beriya (ku fermanê ji Xwedê bistînin) napeyivin û ew tenê bi fermana Wî tevdigerin***. **(Enbiya 26-27)**

**Baweriya bi wan, çend rewşan di xwe de digre: 1-** Baweriya bi hebûna wan. **2-** Baweriya bi wanên ku em navên wan dizanin, Mîna Cibreîl. **3-** Baweriya bi ya em dizanin ji sifetên wan, mîna mezinahiya xulqiyeta wan. **4-** Baweriya bi ya em dizanin ji wezîfeya wan. Mîna melekê mirinê (ruhsitandinê).
**15 Qur'an çî ye?** Qur'an, gotina Xwedê ye, ya ku xwendina wê ibadet e, ji cem Xwedê ve hatiye û yê bi bal ve vegere. Xwedê, bi herf û deng rasteqîne pê axiviye. Cibreîl ji Xwedê sehkiriye, paşê ji Muhemmed pêxember (*Selat û selam li ser bin*) re ragihandiye. Kitêbên semawî; Tewrat, Zebûr û încîl hemî gotina Xwedê ne.
**16 Ma gelo piştî Qur'anê hewcedarîya me bi sunnetê (fermodeyên Pêxember) (*Selat û selam li ser bin*) heye?** Ne durist e ku em dev ji sunnetê berdin. Xwedê, **“*Ya ku Pêxember ji we re anî wê bigirin û ya ku win jê dayînpaş xwe jê bidine paş*.”** **(Heşir 7)** bi vê ayetê ferman li me kiriye ku em bi sunnetê bigrin. Sunnet, hatiye ji bo ku Qur'anê tefsîr bike. Ehkamên dîn ku ne bi sunnetê bê nayê zanîn. Mînaka nimêjê; eger ne ji sunetê bê nayê zanîn ka çend rik'et in, çawa tê kirin û bi çi rewşê tê kirin? Pêxember (*Selat û selam li ser bin*) dibêje: **“*Agahdar bin! Quran ji min re hat û digel wê jî mîna wê ji bo min hat. Agahdar bin! Nêzîke ku zilamekî têr li ser textê xwe runiştî ku bibêje: Bes bi vê Qur'anê bigrin; çi helalekî ku we tê de dît wî helal bikin û çi heramekî ku we tê de dît wê heram bikin*”.** *Ebu Dawûd*
**17 Baweriya bi pêxemberan tê çi watê?** Baweriya bi pêxemberan ev e: Tu bi awakî binbir bawer bikê ku Xwedê ji her umetekê re qasidek şandiye; ew qasid wan tenê gazî bal îbadetê Xwedê ve dikin û îbadetê xeynî Xwedê jî înkar dikin û tu bawer bikê ku hemî pêxember (*Selat û selam li ser bin*) rast in, rast didêrin, xelkê bal heqqiyê ve irşad dikin, qenc in, bixêr û bêr in, xweparêz in, emîndar in, rêhber in û li ser rêka rast in û birastî wan rîsaleta xwe ragihandine, ew qenctirînê mexluqan in û ew ji çêbûn

û heyanî mirinê ji şirk û hevpişkiya ji bo Xweda bêrîne.

**18 Roja qiyametê beşên şefaetê çi ne?** Şefaet (mehderî) çend qism in: **1-** A mezintirînê wan "Şefaeta uzma" ye. Ew di meydana qiyametê de ye, piştî ku mirov pêncîhezar sal li hêviya ku di navbera wan de hukim bêkirin; vêca Muhemmed Pêxember (Selat û selam li ser bin) li cem Rebbê xwe şefaetê dike û ji Xwedê dixwaze ku mirovan ji hev veqetîne. Ev yek xasê bi Xwendê me muhemmed e (Selat û selam li ser bin). Ev meqamê mahmûd e (meqamê hêjayî pesindayînê), ew meqamê ku jê re hatiye sozdayîn. **2-** Şefaeta di dema vekirina deriyê cennetê de ye. Yê ku yekem deriyê cennetê vedike pêxemberê me Muhemmed e (Selat û selam li ser bin) û yê ku ewil dikeve cennetê ummeta wî ye. **3-** Şefeate derbarî qewmekî de ye ku li ser wan bi ketina êgir hukim hatiye kirin, ji bo wan şefaet tê kirin da ku nekevinê de. **4-** Şefaetkariya ji bo muwehhidên ku ketine êgir de da ku jê derkev in. **5-** Şefaetkariya ji bo bilindkirina ehlê cennetê ye. **6-** Şefaetkariya derbarî hin xelkan de ji bo ku bêhisab herin cennetê. **7-** Şefaetkariya derheqî sivikkirina ezabê hin kafiran e. ev jî xasê bi Pêxemberê me ye ku di derheqî apê wî Ebutalib de ye ji bo ku ezab li serê sivik bibe. **8-** Şefaetkariya ku Xwedê bi rehmeta xwe muwehhidê ku ketine cehnemê û bê mehder in ku wan ji cehnemê derîne û wan têxe cennetê ku ev jî pirin nayên jimartin.

**19 Ma gelo arîkarî yan jî mehderî (şefaet) ji sağan tê kirin an na?** Belê tê kirin û îslam jî arîkariya li ser xelkê teşwîq dike. Xwedê Teala wiha ferman dike: "***li ser qencî û teqwadariyê arîkarîya hev bikin û li ser gunehkarî û dijminahiyê arîkariya hev nekin.***"*(Maîde 2)* Pêxember (Selat û selam li ser bin) wiha dibêje: "***Heyanî bende di arîkariya birayê xwe de bê Xwedê jî arîkarê bende ye***". *Muslim*

Heçî ku şefaet e; xêra wê mezin e. Şefaet, bi wateya wesîle û navgîn tê. Xwedê Teala wiha dibêje: "***ew kesê mehderiyeke rind û xweşik bike jê re parek jê heye.***"*(Nîsa 85)* Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje: "***Mehderiyê bikin mukafata xwe bistînin***". *Buxarî*

**Ji bo şefaetkariyê şert û merc hene: 1-** lazim e ku arîkarî yan jî daxwaza mehderîyê ji sağan bê kirin. Daxwaza wê ji miriyan ew dibe dua. Merivê mirî duaya wî seh nake. Xwedê Teala dibêje: **"*Eger tu gazî wan bikî ew gaziya te seh nakin û eger ew seh bikin jî ew nikarin bersiva we bidin.*"** (El-Fatir 14) Çawa ji yê mirî daxwaz tê kirin, digel ku ew mihtacê duaaya yê sax e. Birastî jî emelê wî bi mirinê hatiye birîn ji bilî xêra ku bi duakirinê û xeynî wê jî gihabiyê. Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje**: "*Dema İnsan dimire emelê wî tê birîn ji bilî sê tiştan: Sedeqeyeke berdewamî, îlmekî ku feyde jê were dîtin yan jî weledekî salih ku dua jê re bike.*"** *Muslim.*

**2-** Lazim e ya ku tê xwestin were fehmkirin. **3-** Lazim e yê ku daxwaz jê tê kirin li wir hazir bê. **4-** Lazime hêza wî li ser ya tê xwestin hebe. **5-** Daxwazî lazim e di kar û barê dinyayê de bê. **6-** Lazim e daxwaza tiştekî ku caiz bê, tê de ziyan tunebê.

**20 Çend beşê tewessulê hene? Du beş tewesul hene:**

**Yek-** Tewesula caiz (durist) e. Ev jî sê beş in:

**1-** Tewesula bi nav û sifatên Xwedê. **2-** Tewesula bi hinek ji emelê qenc, mîna rewşa sê hevalên ku di şikeftê de asê mabûn. **3-** Tewesula bi duayên musilmanên salih e; ew ên sax ên hazir ên ku gumana qebûla duayên wan tên kirin.

**Dido-** Tewesula heram e. Ew jî du beş in:

**1-** Daxwaziya ji Xwedê bi rûmeta Pêxember (Selat û selam li ser bin) yan bi rûmeta weliy î.

Mîna ku bibêjê: Xwedayê min, ez bi rûmeta Pêxemberê te yan bi rûmeta Huseyn ji te dixwazim. Rast e; rûmeta Pêxember (Selat û selam li ser bin) li cem Xwedê mezin e, her wisa rûmeta merivên salih jî mezin e, lê belê sehabiyan -digel ku ew bêtir rijdtir bûn li ser kirina xêrê- dema erd ji bêavî hişk bû û bû xelayî bi rûmeta Pêxember (Selat û selam li ser bin) -digel ku qebra wî di nav wan de bû jî- ji Xwedê baran daxwaz nekirin. Belkî wan bi duayê apê Pêxember Ebbas (*Xwedê jê razîbê*) tewesul kirin.

**2-** Bende hewcedariya xwe ji Xwedê bixwaze ku bi Pêxemberê wî yan bi weliyî sond bixwe. Mîna ku ew bibêje: Xwedayê min, ez flan tiştî ji te dixwazim bi xatirê weliyê te filan kes yan bi heqê filan pêxemberê te. Lewra; sonda bi mexluqan li ser mexluqan nedurist e. Naxwe; sonda bi mexluqan li ser Xwedê bêtir nedurist e. Paşê, bes bi sedem ibadetê ji Xwedê re, li ser Xwedê tu heqek ji bende re tun e.

**21 Wateya baweriya bi roja axretê çî ye?** Wateya wê ev e ku tu bi baweriyeke binbir bawer bikî ku ew ê rû bidê. Baweriya bi mirinê, bi suala qebrê; ezabê wê û xweşiyên wê, nefxa di surê de, rabûna mirovan ber bi xwedayê xwe ve, belavkirina suhûfan li ser xwediyên wan, danîna mêzînê ji bo kêşandina emelê îbadan, pira li ser cehnemê, hewzê Pêxember, şefaetkariya wî û paşê bi bal cennetê yan bi bal cehnemê ve; ev tev dikevin bin mijara baweriya bi roja axretê.

**22 Nîşanên qiyametê ên mezin çi ne?** Pêxember (Selat û selam li ser bin) di fermodeya xwe de wiha gotiye: "***Birastî jî heyanî hûn beriya qiyametê deh nîşanan nebînin qiyamet ranabe û got: düxan, deccal, derketina rojê ji roava ve, daketina îsayê kurê Meryemê, yacûc û macûc, sê xesif; yek li rohilat yek li roava û yek li cezîra erebî, di pey van re agirek yê derkeve mirovan dajoyê ber bi mehşerê ve.***" *(Muslim)*

**23 Fitna (ceribandina) herî mezin a ku bi ser mirovan de tê çi ye?** Cenabê Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: "***Ji xulqandina Adem heyanî qiyametê rewşeke ji ya deccal dijwartir tune ye***." *(Muslim)* Deccal, zilamekî ji nesla Adem e, di axirê zeman de derdikeve, di navbera herdu çavên wî de "kefere" nivîsî ye, her bawermend wê dixwîne. Çavê wî yê rastê kor e, çavê wî mîna liba tirî ya qemiçandiya negihiştî ye. Dema ewil ku derdikeve doza qenciyê dike, paşê doza pêxemberiyê dike û paşê doza xwedatîyê dike. Bi bal xelkê ve tê wan gazî bal xwe ve dike, xelk pê bawerî nayênin û gotina wî lê vedigerînin, êdî ew dev ji wan berdide, vêca malên wan didin pey; ew ji xew radibin ku tiştek di destê wan de nemaye. Piştî vê ew dîsa tê û xelkê gazî bal xwe ve dike, xelk bersiva wî didin û baweriyê pê tînin. Li asîmanan ferman dike; ew baranê dibarîne. Li erdê ferman dike ku şînahiyê derxîne, vêca erd şîn dibe. Bi ser insanan de tê û digel wî av û agir hene; agirê wî ava sar e û ava wî agir e. ji mirovê bawermend re lazim e ku di piştî her nimêja ferz ji fitna wî bi Xwedê xwe biparêze û eger ku bigihiyê li serê sermijarên sûreyê Kehf bixwîne û tirsa fitnê lazim e ji pêrgîhatina wî xwe biparêze. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: "***Ew kesê seh bike ku deccal derketiye bila xwe jê biparêze. Ez qesem dikim bi Xwedê; zilam tê balê û ew guman dike ku ew mirovekî bawermend e, vêca dibe peyrewê wî, ji ber ku tiştê gumanbar tîne.***" *(Ebu Dawûd)* Ew çil royî li ser erdê dimîne; royek mîna salekê ye, royek mîna mehekê ye, royek mîna hefteyekê ye û royên din mîna royên me yên vêga ne. Ew, ji bilî Mekkê û Medînê tu erd û tu bajarekî nahêle; her ewê bikeviyê, paşê Îsa (Silava Xwedê li ser bê) nazil dibe û wî dikuje.

**24 Ma gelo Cennet û Dojeh aniha hene?** Belê, ew aniha mewcûd in. Xwedê beriya insanan bixuliqîne ew çêkirine. Ew tu caran nabûde nabin û nahelikin jî. Xwedê ji bo cennetê bi kerema xwe hin xelk afirandine û ji bo dojehê jî bi dadperweriya xwe hin xelk afirandine û her yek ji wan ji bo ya jê re hatiye afirandin musixur bûye.

**25 Wateya baweriya bi qederê çî ye?** Meriv bi baweriyeke binbir bawer bike ku çiqas qencî û xerabiya ku heye bi hukmê Xwedê û qedera wî ye û Xwedê, ya ku bivê dikê. Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje: "*Eger Xwedê xelkê erd û asîmanê xwe bide ezabê, ew wan dide ezabê û ew zilmê jî li wan nake. Eger rehmê li wan bike, rehmeta wî ji karên wan xêrtir e. Eger tu bi qasî çiyayê Uhudê di rêka Xwedê de zêr xerc bikê, Xwedê ji te qebûl nake heyanî tu bi qederê bawerî neyînê û heyanî tu bizane ku ya hatî serê te ne ji bo gunehê te ye û gunehê te kirî jî ne ji bo ku bê serê te û eger tu ne li ser vê baweriyê bimrê teqez tu yê herê dojehê.*" *(Ahmed û Ebu Dawûd)*

**Baweriya bi qederê çar hukman di xwe de digre:**

**1-** Meriv bawer bike ku Xwedê her tiştî liserhev û ji hev veqetayî dizane.

**2-** Bawer bike ku Xwedê ew di Lewh'ul-Mahfûzê de nivîsiye, Cenabê Pêxember (Silava û selama Xwedê li ser be) wiha dibêje: "***Xwedê qedera tevekê mexluqan beriya erd û asmanan bi xuliqîne bi pêncî hezar sal nivîsandiye.***" *(Muslim)*

**3-** Bawerî bi viyana Xwedê ya ku dema bivê bicih tîne, ew a ku tiştek wê navegerîne û bawerî bi qudreta wî ya ku tiştek wê naçar nahêle; ya ew bivê çêdibe û ya ew nevê çênabe.

**4-** Bawer bike ku Xwedê çêker û peydekerê hemî tiştan e û yên ji bilî wî mexluqên wî ne.

**26 Ma gelo ji mexluqan re qudret, vîn û daxwaziyeke rasteqîne heye?** Belê ji însanî re vîn, viyan û bijartin heye. Lê belê ji bin meşieta Xwedê dernakeve. Xwedê Teala wiha gotiya: "***Ji bilî ku Xwedê viyabê pê ve hûn nikarin tiştekî bivên.***" **(Et-Tekwîr 26)** Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje: "***kar bikin her kes ji ya ku jê re hatiye afirandin re mısuxr e.***" **(Muttefequn Eleyh)** Xwedê aqil, guh û çav dane me da ku em yê qenc û xirab ji hev veqetînin. Vêca ma aqilekî wisa heye ku diziyê bike û paşî bibêje: Xwedê ev li ser me nivisîye!? Eger wisa bibêjê xelk wî mazûr nabîne, belkî yê wî ciza bikin û yê jê re bêjin: Xwedê ev ciza jî her wisa li ser te nivisîye. Naxwe; hêncet û mazûriyeta bi qederê nedurist e û ev bêbaweriye. Xwedê Teala dibêje: "***Ew ên ku ji Xwedê re heval û şirîk çêkirine, dê bibêjin: Eger Xwedê bixwesta ne me û ne jî bavên me ji Xwedê re şirîk çênedikirin û me tiştek (ji cem xwe ve) heram nedikir. Her wiha yên beriya wan jî bi pêxemberên xwe bawerî neanîn, heta ku azara me tehm kirin.***" *(En'am 148)*

**27 Îhsan çî ye?** Ji Pêxember (Selat û selam li ser bin) îhsan hate pirskirin, Pêxember got: "***Îhsan ew e ku tu îbadetê Xwedê bikî her wekî ku tu Xwedê dibînê, eger tu wî nebinê jî vêca ew te dibînê.***" *(Muslim)* Îhsan yek ji her sê mertebeyên mezin ên dîn e.

**28 Tewhîd çend beş in?** Tewhîd sê beş in.

**1-** Tewhîda rubûbiyetê, ya ku meriv Xwedê bi kirarên wî yekbidêrê. Ango; di xulqandinê de, di riziqdayinê de û saxkirinê de wî tek bidêrê û her wisa. Birastî kafiran jî beriya hinartina pêxember (Selat û selam li ser bin) bi vî sifetî mukir dihatin.

**2-** Tewhîda uluhiyyetê, ya ku meriv bi ibadetê, Xwedê yek bidêrê, mîna nimêjê,

sedeqe û nezran û her wisa... Ji bo yekdêrîna Xwedê bi ibadetê pêk were pêxember (Selat û selam li ser bin) hatina şandin û kitêb hatine hinartin.

**3-** Tewhîda nav û sîfatan e, ji navên herî xweşik û sifatên herî bilind ya ku Xwedê û resulê wî ji Xwedê re binecih kirin binecih bikê, bêyî ku meriv nususan tehrîf û ta'tîl bike û sifatan jî keyfiyet û wekitiyê bidiyê.

**29 Welî kî ye?** Welî, bawermendê salih ê teqwadar e. Xwedê Teala ferman dike: "***Agahdar bin! Weliyê Xwedê (roja qiyametê) ne tirs li ser wan heye; ne jî ew xemgîn dibin. Ewên ku bawerî anîne û hay ji emr û nehyê Xwedê mane.***" **(Yûnus 62-63)** Pêxember (Selat û selam li ser bin) wiha gotiya: "***Birastî, weliyê min bes Xwedê û qencê muminan e.***" *(Muttefequn eleyh)*

**30 Pêşberî sehabiyên pêxember (Selat û selam li ser bin) erka (wacibê) me çî ye?** Ya wacib ew e ku meriv ji wan hez bike, ji wan razî be, dilê me û zimanê me ji avêtina wan parastî be, qenciya wan belav bike, tişta di navbera wan de qewimiye xwe jê dûr bigre, digel ku ew ji gunehan ne masûm in. Lê belê ew muctehid bûn; yê ku di ictihada xwe de rastçûye jê re du xêr hene û yê ku di ictihada xwe de şaş çûye jê re xêrek heye û şaşiya wî jî tê efûkirin. Ji wan re hin fezîlet hene ku dibin kefaretê nebaşiyên wan. Ew di ser hev re ne; ji wan yê herî qenc deh sehabî ne; Ebûbekir, Umer, Usman, 'Elî, Telha, Zubeyr, Abdurrehman bin Ewf, Sa'd bin Ebiweqqas, Seîd bin zeyd û Ebu Ubeyda bin Cerrah e, paşê hemî muhacir, paşê ji muhacir û ensaran yê ku amadeyî cenga Bedrê bune, paşê tevekê ensariyan û paşê tevekê sehabiyan e. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: "***Seba sehabiyên min nekin; Ez bi wî zatê ku rıhê min di destê wî de ye sond dixwum; eger yek ji we mîna çiyayê Uhudê zêr xerc bike, xêra wî negihije kulma yekî ji wan, yan jî çengekî wê.***" *(Muttefequn eleyh)* Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje: "***Kî seba sehabiyên min bike; laneta Xwedê, ya melaiketan û ya tevekê insanan li serê ye.***" *(Teberanî)*

**31 Ma gelo em zêdeyê qederê ku Xwedê daye Pêxember (Selat û selam li ser bin) dikarin salixê wî bidin?** Bê guman xwendê me Muhemmed (Selat û selam li ser bin) rumettirîn mexluqê Xwedê û qenctrînê hemîyan e. Lê belê nedurist e ku zêdeyiyê di salixê wî de bikin; çawa ku filehan di salixê Îsayê kurê Meryemê de zêde çûne. Lewra Pêxember (Selat û selam li ser bin) nehya me jê kiriye; "***Zêde medhê min nekin çawa ku filehan kiriye, bes ez bendeyê Xwedê û resûlê wî me. Naxwe bibêjin: Bendeyê Xwedê û resûlê wî.***" *(Buxarî)*

**32 Ma gelo ehlîkitêb (cihû û fileh) mu'min (bawermend) in?** Cihû û fileh û peyrewên dînên din kafir in, çendî ew peyrewê dînekî bin ku di eslê xwe durist be jî. Çiqas kesê ku piştî şandina Pêxember (Selat û selam li ser bin) terka dînê xwe neke û musilman nebe; "***Ew jê nayê qebulkirin û li axretê ew ji yên xesirîye.***" **(Alî-Îmran 85)** Dema merivê musilman bawer neke ku ew kafir in yan jî di pûçatiya dînê wan de di gumanê de bê, ew jî kafir dibe. Ji ber ku di kufra wan de dijatiya Xwedê û Pêxemberê wî kiriye. Xwedê Teala dibêje: "***Ji ehlê dînan ew kesê bawerî pê (bi pêxember) neyîne cihê wan agir e.***" **(Hûd 17)** Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: "***Ez bi wî zatê ku canê Muhemmed di destê wî deye sond dixwum; her çi kesê ji vê ummetê û çi cihû û çi filehê ku hatina min bi pêxemberî seh kiribe, paşê bimre û bi min bawerî neanibe, ew her xelkê êgir e.***" *(Muslim)*

**33 Ma gelo durist e ku meriv li kafiran zilmê bike?** Edaletwarî wacib e. Xwedê

Teala dibêje: “***Birastî Xwedê bi dadperwerî û qecîkariyê ferman dike***.” **(Nehl 90)** Sitemkarî hatiye heramkirin, lewra Xwedê di hedîsa qudsî de dibêje: “***Min li ser xwe sitemkarî heram kiriye û di navbera we de jî heram kiriye, vêca li hev sitemkariyê nekin***.”***(Muslim)*** Merivê sitemlêbûyî (mezlûm) roja qiyametê heyfa xwe ji sitemkarê xwe distîne. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: “***Erê ma hûn dizanin muflis kî ye? Gotin: di nav me de yê muflis ew kesê ku pere û malê wî tunebê. Pêxember got: Birastî muflis ew kesa ye ku roja qiyametê bi nimêj, bi rojî û bi zekat tê, ew tê digel ku çêrî wî kiriye, avêtiye vî, malê wî xwariye, xwîna vî rijandiye û li vi xistiye, vêca ji xêrên wî didin vî û didin wî, êdî eger beriya heq jê bê sitandin xêrên wî xilas bibin; ji gunehên wan tên girtin û davêjine ser wî, paşê wî davêjin dojehê***.” ***(Muslim)*** Heta ku heyfsitandin di navbera ajalan de jî dê bibe.

**34 Bid'et çî ye?** Îbn Receb (*rehma Xwedê lêbê*) gotiye: “Ji bid'etê mexsed ev e; di şerî'etê de tiştek bê peyde kirin, jê re eslekî ku dilaletî ser bikî tunebe. Heçî ya ku jê re eslek ji şerî'etê hebe ku dîlaletî ser bikê, ew di istîlaha şer'î de ne bid'et e, her çiqas di luxet de ew bid'et be jî.”

**35 Ma di dîn de bid'eyê hesene û bid'eyê seyyîe hene? A**yet û hedîs di zemma bid'an de bi wateya xwe ya şer'î hatine. Bid'e, tişte nû derkeve û di şer'etê te tu esil jê re tune be. Çawa ku Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje: “***Ew kesê di dîn de emelekî bike û fermana me pê tunebê ew emel lêdizîvire.***” ***(Muttefequn eleyh)*** Dîsa gotiye: “***Birastî her çiqas tişta li dîn nû peyde büye ew bid'et e û her bid'et jî rêşaşî ye.***” ***(Ebu Dawûd)*** Îmam Malik, di wateya bid'eye şer'î de gotiye: “*Ew kesê di îslamê de bid'eyekê çêke û wê xweşik bibîne, birastî wî guman kiriye ku Muhemmed (Selat û selam li ser bin) xiyanet li pêxemberiyê kiriye.*” Lewra; Xwedê dibêje: “***Ev ro min dînê we ji bo we kemiland û min qenciya xwe li ser we temam kir***.”**(El-Maîde 3)** Birastî hin fermode (hedîs) hatine ku medhê bid'e didin bi wateya wan a luxewî, çawa ku Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: “***Ew kesê adetekî xweşik û rind di îslamê de deyne, xêra wî jê re ye û xêra yên ku di pey de emel pê bikin jî, bêyî ku ji xêra wan tiştek kêm bibe.***” ***(Muslim)*** Bi vê wateyê gotina Xwendê me Umer (Xwedê lê razîbe) hatiye: “*Ev çi xweş bid'eye*”, qesda nimêja terawîha kiriye. Nimêja terawîha berê meşrû' bû û Pêxember (Selat û selam li ser bin) jî teşwîq kiribû û sê şevan bi sehaban re nimêja terawîha kiribû. Paşê ji tirsa li ser wan ferz bibe dev jê berda, vêca Umer nimêja terawîha kir û xelk li serê komkirin.

**36 Nîfaq çend beş in?** Du beşê nîfaqê hene: **1-Îtîqadî ye (ev ya mezin e)** ku baweriya xwe aşkere bike û kufra xwe veşêre. Ev cure nîfaq mirovan ji dîn derdixe. Dema xwediyê vê nifaqê bimre û ew li serê bi rijd bê ew li ser kufrê dimire. Xwedê Teala dibêje: “***Birastî munafiq di êgir de li cihê herî jêr de ne***.”**(Nîsa 145)**

Ji nîşanên munafiqan: Ew, Xwedê û yên ku bawerî anîne dixapînin û ji muminan dixeyidin, li hember musilmanan arîkariya kafiran dikin û dixwazin ku bi kiryarên xwe yên baş hinekî ji pertalê dinyayê bidestxin.

**2- Emelî ye ( ev ya biçûk e).** Ev xwediyê xwe ji îslamê dernayêxê, lê belê li ser xetereke wisaye eger ku tobe neke wî digihîne nîfaqa mezin. Ji xwediyê vê cure nîfaqê jî hin salix hene: ji wan e; dema xeber bide derew dike, dema civan dide nayê civanê xwe, dema niqaşê dike neheqî dike, dema soz dide soza xwe bicih

naêne û dema xwe disipêrinê xayîntiyê dike. Ji ber vê yekê; sehabiyên Pêxember (Selat û selam li ser bin) ji nîfaqa emelî ditirsiyan. Kurê ebu Muleyka (Xwedê lê razîbe) gotiya: Ez gihiştim sîh sehabiyên Pêxember, (Selat û selam li ser bin) tevekê wan ji nîfaqê ditirsiyan. Îbrahîmê Teymî *(Rehma Xwedê lêbe)* gotiya: "*Ez qiyasa emelê xwe li ser gotinên xwe dikim, ed ditirsim ku ez derewkar bim*". Hesenê Besrî *(Rehma Xwedê lêbe)* gotiya: *Merevê mumin her jê bi tirs e û yê munafiq jê ewle ye*." Umer ji Huzeyfe (Xwedê lê razîbe) re got: Tu bi xatirê Xwedê kê; Pêxember, di nav munafiqan de, ji te re qe bahsa min kir? Huzeyfe got: Nexêr û piştî te ez li ser vê mijarê xebernadim.

**37 Li cem Xwedê gunehên herî mezin çi ne?** Gunehê herî mezin ku ji Xwedê re şerîkan çêke. Çawa ku Xwedê gotiya: ***"Bi rastî ji Xwedê re hevta çêkirin sitemkariyeke mezin e."*** **(Luqman 13)** Pêxember, (Selat û selam li ser bin) dema jê hate pîrsîn; Kijan guneh herî mezin e? Got: ***"Gunehê herî mezin ew e, ku tu ji Xwedê re hevta çêkê digel ku wî tu çêkiriye."*** **Muttefequn eleyh**

**38 Çend beş şirk hene? Du beş şirk hene;**

**1- Şirka mezin** e ku ew xwediyê xwe ji îslamê derdixe û Xwedê li xwediyê wê nabore. Xwedê Teala dibêje: "***Birastî Xwedê gunehê ku tu şerîka jê re çêkê efu nake û ji bilî gunehê şirkê, Xwedê ya bivê efu dike.***" **(Nîsa 48)**

**Şirk çar beş in:**

**a-** Di duakirin û xwestinê de şerîk çêkirin e.

**b-** Di Niyet, armanc û vîyanê de şerîk çêkirin e, çawa ku ne ji bo Xwedê qenciyê bikê.

**c-** Di îtaetkirinê de şerîk çêkirin e; mîna ku, di helalkirina tişta ku Xwedê heram kirî û heramkirina tişta ku Xwedê helal kirî de ji zanayekî re îtaet bike.

**d-** Di hezkirinê de şerîk çêkirin e; Weke hez ji Xwedê dike wisa hez ji yekî bike.

**2- Şirka biçûk e,** ya ku Xwediyê xwe ji îslamê dernaêxe. Ew jî li ser du beşa ye:

**a- Şirka aşkere ye.** Wek hev e; çi xwe bi gotinan ve girêde, mîna sonda ne bi Xwedê, yan jî bibêje: ku Xwedê hezbike û tu hezbike û gotina ku bibêje: eger ne ji Xwedê û flankes ba ne. Yan jî xwe bi kirinan ve girêbide; mîna ku ji bo rakirina belayê yan jî paşdexistina wê xelek û tayîka bi xwe ve ke, ji tirsa çavan morîkan bixwe ve bike û yan jî bêyomî ye ku bi teyrik û navan, gotin û cihan bêoxiriyê bike ?

**b- Şirka bidizîye,** mîna şirka di niyet, armanc û vîyanê de, weke; riyakarî û navçêkirinê.

**39 Ferqa di navbera şirka mezin û ya biçûk de çî ye?** Ferqek ji wan ev e ku şirka mezin li ser xwediyê wê bi derketina ji dîn û bi ebedîmayina di êgir de tê hukimkirin. Heçî ku şirka biçûk e, di dinyayê de li ser xwediyê wê bi kufrê hukim nake û di axretê de jî ebedî di êgir de namîne. Digel ku şirka mezin tevekê emelê ku berê kirî eger ku li serê bimre dişewitênê; şirka biçûk emelê ku digel wê kiri betal dike. Meseleyeke din maye ku ixtîlaf tê heye, ew jî ev e: Ma gelo; şirka biçûk eynî mîna şirka mezin ku ne bi tobê be nayê efukirin, yan ew jî mîna gunehên mezin di bin vîyana Xwedê de ye? Kêşe li ser kîjan gotinê bê, birastî rewş xeter e.

**40 Ma gelo ji şirka biçûk re beriya ku bikeviyê xweparêzî, yan jî eger ku ketiyê ma jê re kefaret heye?** Belê heye; xweparêziya ji riyakariyê ew e ku bi emelê xwe riza Xwedê qesd bikê û heçî ku hindikê wê ye ku xwe bi dua biparêzê. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiya: ***"Gelî însanan! Xwe ji vê şirkê biparêzin, birastî ew ji***

***dengê meşa mirustankê bidizîtir e.*"** Ji Pêxember (Selat û selam li ser bin) re gotin: Ey resulê Xwedê! Ew ji dengê meşa mirustankê bidizîtir e, ka em ê çawa xwe jê biparêzin? Pêxember (Selat û selam li ser bin) got: **"*Bibêjin: Xwedayê min! Em bi te xwe diparêzin ku em bizanîn tiştekî ji te re bikin şerîk û ji ya ku em pê nizanin jî em daxwaza lêborîna te dikin.*"** *(Ahmed)*

Heçî ku kefaretê sonda bi xên ji Xwedê ye; vêca birastî Pêxember (Selat û selam li ser bin) derbarî wê de gotiya: **"*Ew kesê bi lat û uza sond bixwe, bila bibêje: "Laîlahe îllellah" "Ji Xwedê pê ve tu mabudê bi rastî tun in.*"** *(Muttefequn eleyh)*

Heçî ku kefaretê bêqidoşdîtinê ye; birastî Pêxember (Selat û selam li ser bin) derbarî wê de gotiya: **"*Ew kesê ku tirsa bêyomîyê wî ji oxira wî dagerîne, bi rastî wî şirk kiriye*"**. Gotin: Ma kefaretê vê çî ye? Pêxember (Selat û selam li ser bin) got: Kefaretê wê ku tu bibêjê: "***Xwedayê min! Ji xêra ku tu bidê pê ve tu xêr tun e û ji bêyomiya ku tu bidê pê ve tu bêyomî tune û ji te pê ve tu xweda tun in.***" *(Ahmed)*

**41 Kufir çend beş in?** Kufir du beş in:

**1-** Kufra mezin e, ya ku merivî ji îslamê derdixe, ev jî pênc beş in: **a-** Kufra bi sedem bêbaweriyê. **b-** Kufra xwemezindêriyê digel ku bawer dike. **c-** Kufra ji ber şek (guman)ê. **d-** Kufra ji bervegerandina ji dîn. **e-** Kufra bi sebeb nîfaqê.

**2- Kufra biçûk;** ev jî kufra bi sedem gunehan e ku ev Xwediyê xwe ji îslamê dernaêxe. Mîna; kujtina merivekî musilman.

**42 Hukmê nezrê çî ye?** Pêxember (Selat û selam li ser bin) lixwenezirkirin xweş nedîtiye. Derbarî wê de wiha gotiya: **"*Nezir qenciyê bi xwere nayênê.*"** *(Buxarî)* Ev yek jî dema nezirkirin ji bo Xwedê be, lê belê dema ne ji bo Xwedê be, Mîna ku ji bo qebrekê yan ji bo weliyekî nezir bike; vêca ev nezrek e heram e, ne durist e û bicihanîna wê ne caiz e.

**43 Hukmê ku meriv here cem errefa (xêfzanan) yan jî sêrbazan çî ye?** Ew heram e. eger yek here cem wan ku feydeyekê ji wan daxwaz bikê, lê belê bi gotina wan a ku xeybê dizanin bawerî neyîne; "nimêja çil royî jê nayê qebulkirin" lewra Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiya: **"*Ew kesê here cem errafekî, vêca tişta jê bipirse; nimêja çil şevî jê nayê qebulkirin.*"** *(Muslim)* Eger here cem wan û bi gotina wan ya ji xeybê bawerî bîne birastî ew kafir dibe. Lewra Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiya: **"*Ew kesê here cem errafekî yan kahinekî û bi tişta dibêjê bawerî bîne; birastî wî bi Quranê bawerî neanîye.*"** *(Ebu Dawûd)*

**44 Çi gavê daxwazkirina baranê bi stêran dibe şirka mezin yan jî şirka biçûk?** Ew kesê bawer bike ku ji stêran re tesîrek heye bêyî ku Xwedê bivê, vêca nisbeta baranê bide bal sitêran ve ku ew baranê tênin meydanê û wê dixuliqînin; ha ev, şirka mezin e. Lê belê; ew kesê bawer bike ku ji stêran re tesîrek heye, lê bi vîna Xwedê ye û Xwedê ew stêr gerandine sebeb ji bo hatina baranê û Xwedê suneta xwe ya baran barandinê li nik derketina wê stêrê têne meydanê, vêca ha ev; heram e û şirka biçûk e, bi sedem ku ew kirine sebeb bê delîleke ji şer'ê, yan delîleleke li ber çav, yan delîleleke ji aqilê durist hebe. Lê belê ku meriv wan bike nîşan ji bo mewsimê salê û demên lêgerîna hatina baranê; ev durist e.

**45 Li hember yên ku ji rewşa musilmanan berpirs in çi wacib e?** Ya ji bo wan wacib di ferehî û tangasiyê de gohdarîkirin û îtaet e. Her çiqas ew tadayîyekê bikin

jî ne duriste li hemberî wan derkevin. Em nifira li wan nakin û em destê tu kesî ji îtaeta wan nakêşin û e mê ji bo başiya wan, saxiya wan, hîdayet û rastiya wan dua bikin. Heyanî ew bi gunehkariyê ferman nekin îtaeta wan em bi îtaeta Xwedê dizanin. Eger ew bi gunehkariyê ferman bikin; di wê de ji bo wan îtaet heram e û ji bilî vê di yên marûf de îtaet wacib e. Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje: "*Gohdarî û îtaeta serdarê xwe bike herçiqas li pişta te bê lêlêxistin û malê te bê standin, naxwe; gohdarî bike û beremir be.*" *(Muslim)*

**46 Di emr û nehyên Xwedê de ma gelo pirsa ji hikmeta wî duriste?** Belê, bi egera ku bawerî û emel bi naskirina hikmetê û qena'eta pê ve neyêne girêdan. Zanîna hikmetê, ji bo merivê bawermend bes ji bo zêde binecihiya li ser heqîyê ye. Lê belê teslîmiyeta bê qeyd û şert û pirsnekirin ji hikmeta wî nîşan e li ser kemala ubûdiyetê û baweriya bi Xwedê û bi hikmeta wî ya bêkêmasî; mîna rewşa sehabiyên Pêxember (*Xwedê ji wan razîbe*).

**47 Mexsed bi vê gotina Xwedê "*çi qenciya bigihê te ew ji cem Xwedê ye û nebaşiya ku bê serê te ew ji te ye*" çî ye?** Di vê ayetê de ji qenciyê mexsed; xweşî ne û bi nebaşiyê mexsed; derd û bela ne. Ev tev jî ji cem Xwedê hatine teqdîrkirin. Heçî ku başî ne ew bi bal Xwedê ve têne alî dan. Lewra; Xwedê ye yê ku qencî pêkiriye. Xerabî, Xwedê ji bo hikmetekê ew çêkiriye. Ew bi itîbar wê hikmetê ji qenciya Xwedê ye. Kar û barê Xwedê tev xweşik in. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: "*Qencî tev di destê te de ye û xerabî ne ji cem te ye.*"*(Muslim)* Naxwe; kirinên îbadan mexluqên Xwedê ne û di heman demê de ew kesba îbadan e. Xwedê Teala wiha gotiye: "***Vêca herçî ku (malê xwe di riya Xwedê de) da û hay ji fermanên Xwedê ma.. Bawerî bi cennetê anî û jê re xebat kir.. Êdî em ê jî riya wî ji bo ya hêsan (cennetê) sehl bikin.***" **(El-Leyl 5-7)**

**48 Ma ez dikarim bibêjim flankes şehîd e?** Li ser merivekî kifşe hukimkirina bi şehîdîyê, eynî mîna ku jê re hukim bide; ew cennetî ye. Mezhebê ehlê sunnetê, durist nadêre ku meriv ji yekî nas re bibêje: ew ji ehlê cennetê ye yan jî bibêje: ew ji ehlê êgir e. Ji bilî ku Pêxember (Selat û selam li ser bin) ji yekî xeber dabe ku ew cennetî yan dojehî ye. Lewra heqîqet veşartiye û bi ya ku însan li serê dimre em pê nizanin. Emelê însên li gorî dûmahîka temenê wî ye, bi niyeta însanan Xwedê dizane. Lê belê em ji merivê qenc re xêrê hêvî dikin û li ser yê nebaş ji ezabê didirsin.

**49 Ji bo yekî ku bi musilmanî tê zanîn ma hukimdayîne bi kufra wî durist e?** Ne duriste ku merev li ser musilmanekî bi kufrê, bi şirkê û bi nîfaqê hukim bide, dema ku tiştek jê aşkere nebûbe ku bi bal kufrê ve wî bide û paşdekerê ji îslamê jî tunebin. Em ê ya di dilê wî de jî hewaleyî bal Xwedê ve bikin.

**50 Ma ji bilî beytullahê tewafa tiştekî din durist e?** Ji bii Ka'ba xwedanrûmet tu cih li ser erdê tune ku tewafkirina wê durist be. Ne duriste teşbîha tu cihî bi beytê ve bête kirin çiqas ku ew cih bi rûmet be jî. Ew kesê bi xên ji ka'bê bi rêzdarî cihekî tewaf bike, birastî wî bêemriya Xwedê kiriye.

# KAR Û BARÊN DERÛNÎ

## (Kar û barên di dil de)

Xwedê dil (qelb) xuliqand; ew kire sultan, tevekên azayên însên jî jê re kirin leşker; vêca dema sultan rehet û xweş bê, leşker jî rehet dibe. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: ***"Birastî di cesed de perçeyek heye; dema ew çaksaz be tevekê cesed çaksaz e û dema ew xerab be tevekê cesed xerab e, hûn haydar bin ku ew dil e."*** **(Muttefequn eleyh)** Îcar dil; cihê îman û teqwayê ye, yan jî cihê kufr û şirk û nîfaqê ye. Pêxember (Selat û selam li ser bin) wiha gotiya: "***Teqwadarî ha di vir de ye"*** îşaretî bal singa xwe ve kiriye û ev gotin sê caran dubare kiriye." ***(Muslim)***

**Îman: îtîqad (bawerî), gotin û emel e.** Bawerî ya dil e, gotin ya ziman e û kar jî yê dil û beden e. Heçî dil e; bawer dike û rast didêre, vêca ji vê jî gotina peyva şehadetê li ser ziman tê holê. Paşê dil, ji hezkirin, tirs û hêvîyê karê xwe dike. Îcar, ziman bi zikrê Xwedê û xwendina Qur'anê digere. Aza jî bi sicûdê, bi rukû'ê û karên qenc dilebit in; ew karên ku merivan nêzî Xwedê dikin. Naxwe; beden peyrew e ji bo dil. Çi tiştê di dil de bi cih bibe, bi şeklekî ji şeklan daxwaziya wî li ser bedenê aşkere dibe.

**Mexsed ji kar û barên dilî çî ye?** Ew karên wisanin ku cihê wan dil e û pê ve tên girêdan. Ya herî mezin, baweriya bi Xwedê ye, ewa ku cihê wê dil e. Ji karê dil e ku merev bi teslimiyetê tesdîq û iqrar û xwe jê re bitewinê. Ev jî tê nisbetkirin bal tişta ku ji bo Rebbê wî dikeve dilê bende de, ji hezkirin, tirs, hêvî, vegera bal Xwedê ve, tewekul, sebir, yeqîn, tirs û mîna wan jî.

**Çiqas karek ji karên dil hebe, vêca dijberê wî nexweşiyek ji nexweşiyên dil e;** Îxlas ji karê dil e, dijê wê riyakarî ye. Yeqîn ji karê dil e, dijê wê guman e. Hezkirin ji karê dil e, dijê wê nehezkirin e û her wisa.. Dema em ji islahkirina dilê xwe xafil bimênin, guneh li serê li hev kom dibin, vêca wî dibe helakê. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiya: ***"Bende dema gunehekî dike nuqteyeke reş li ser dilê wî dikeve, vêca eger ew dev jê berde, lêborîna gunehên xwe ji Xwedê bixwaze û tobe bike, ew niqta reş diçe. Na, eger li gunehan vegere di dil de niqtên reş zêde dibin, heyanî ku li serê bilind dibin. Ha ev rewş ew "RANA" wisa ye ku Xwedê behsa wê kiriye*** **"Nexêr, ne wisan e! Belkî xerabî û gunehên wan, dilên wan mor (û reş) kiriye** **(Muteffifîn 17)."** ***(Tirmizî)***

Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: ***"Fitne mîna hesîrê bi ser dil ve yek li pey yekê tên. Vêca kîjan dilê ku bi van fitnan bê avdayîn bi niqteyeke reş tê niqtekirin û kîjan dilê ku nexwaze; bi niqteyeke spî tê niqtekirin,heyanî ku vedigere bal du dilan ve; yek sipî ye mîna kevirê sefa û heyanî red û asîman hebe fitnên ser ruyê erdê zirarê nadinê. Yê diduyan, reş dibe mîna berdaxa liserdevketî, ne başiyê baş dibîne; ne jî xerabiyê nebeş dibîne, ji bilî ya ku muwafiqê daxwaza wî be."*** ***(Muslim)***

**Naskirina îbadetê qelbî (dilî) li ser bende ji îbadetên bi bedenê ferztir û girîngtir in.** Lewra; heçî ku emelê bi dil e ew kok e û emelê bi bedenê jê re çiql in; wê tekûz dikin, temam dikin û fêkiyê wê ne. Pêxember (Selat û selam li ser bin) wiha gotiya: ***"Xwedê li li şekl û malê we nanêrê, lê belê li dil û emelê we dinêre."*** ***(Muslim)***

Naxwe; dil cihê zanîn, tedebbur û tefekurê ye. Ji ber vê yekê ye, li cem Xwedê, serhevrebûna di navbera însanan de, li gorî binecihîya îman, yeqîn û îxlasa di dil de ye. Hesenê Besrî (rehma Xwedê lê bê) dibêje: "*Ez bi Xwedê sond dixwim; Ebubekir ne bi nimêj û rojiyê kete pêşiya wan, belkî bi binecihîya îmana di dilê xwe de ketiye pêşiya wan."*

**Emelê dil ji çend awayan ve zêdetir e ji emelê bedenê:**

**1-** Birastî xerabûna îbadetê dil carinan îbadetê bedenê xerab dike. Mîna emelê bi riyakarî. **2-** Emelê dil esl e, ew gotin û bizava ku bê qesda dil bête holê, li serê neyê berpisgirtin. **3-** Emelê dil sebebê mertebeyên bilind in di cennetê de, Mîna zuhdê. **4-** Emelê dil girantir û zehmettir e ji emelê bedenê. İbn Munkedir dibêje: "*Min bi nefsa xwe re çil salî mucadele kir heyanî ku ji min re rasterê bû.*" **5-** Emelê dil, ji encam ve Xweşiktir e; mîna hezkirina ji boXwedê. **6-** Emelê dil xêra wê mezintir e, Ebu derda dibêje: "*Tefekkura saetekê ji îbadetê şevekê bi xêrtir e.*" **7-** Emelê dil azayên bedenê dixê hereketê. **8-** Emelê dil, emelê bedenê zêde dike, yan kêm dike yan jî xerab dike, mîna tirs û tefekura di nimêjê de. **9-** Emelê dil carinan di keve bedêla emelê bedenê, mîna qesdkirina sedeqedayînê digel ku malê wî jî tunebe. **10-** Birastî ji padaşta wê re tixûbek tuneye, mîna sebirkişandinê. **11-** Xêra wê berdewam dike digel ku azayên bedenê radiwestin yan jî nikaribin emel bikin. **12-** Emelê dil beriya emelê bedenê ye û digel wan e jî.

**Dil bi hin rewşan re derbas dibe beriya ku aza bixebitin.**

**1- El-hacis:** Ew fikra ku ewil dikeve dil de. **2- El-xatireh:** Ya ku di dil de bicih dibe. **3- Hedîs'ûn-nefs:** Ew dudilî ye; gelo bike yan neke. **4- El-hemm:** Ewa ku kirina wê li balê tercîh e. **5- El- Ezim:** ew hêza armancê û binbirîya kiryarê ye.

Vêca her sisiyê ewilî; ne xêra wan di qenciyê de heye; ne jî gunehê wan di gunehî de heye. Heçî ku **hemm** e; li ser qenciyê xêr jê re heye û li ser xerabiyê guneh li serê tuneye. Paşê dema **hemm** bibe ezim (biryar); vêca eger li ser kar û barekî qenc be, tê xêrdayîn. Na, eger li ser kiryarîya bêemriyê be, gunehkar dibe, her çiqas nekiribe jî. Lewra; daxwaziya karekî ku meriv dikare wî bikê, lazimî xwe dike ku ew hatiye kirin. Xwedê wiha gotiya: "***Ewê ku bi xwazin ku heramî di nav muminan de belev bibe; ji bo wan ezabekî dijwar heye.***" (**Nûr 19**) Pêxember (Selat û selam li ser bin) wiha gotiya: "***Dema du musilman bi şûrê xwe bêne hemberî hev; vêca kûjer û kujtî di êgir de ne.***" Min got: Ey Resûlê Xwedê! Ev kûjer e, ma çi gunehê kujtî heye? Pêxember got: "***Kujtî jî li ser kujtina hevalê xwe birijd bû.***" *(Buxarî)*

**Eger; piştî ku biryara xwe da, terka gunehkariyê kir; vêca ew li ser çar beşen e:**

1- Eger ku ji tirsa Xwedê ew terk kiribe; vêca ew pê tê mukafatkirin.

2- Eger ji tirsa mirovan terk kiribe; ew pê gunehkar dibe. Lewra; terka gunehan îbadet e, lazime ji bo Xwedê be.

3- Eger ku ji naçarhalî terk kiribe bêyî ku navgînên ku bi wan bigihijyê bikarbîne; ev jî mîna ya ewil pê gunehkar dibe, bi sedem niyeta binbir.

4- Eger ku ji naçarhalî terk kiribe digel bikaranîna navgînên ku wî bigihijînê: lêbelê mirada xwe misoger nekiriye. Evê ha, gunehê failê tam li serê tê nivîsîn. Lewra; ew îradeya binbir ew a ku bi karekî hatiye ku kirina wî mimkun e, ew xwediyê xwe digerîne mîna failê tam -*çawa ku di fermodeya Pêxember* (Silava û selama Xwedê li ser be) *de derbas bûye*-. Çi dema emel bi daxwazê re mimilanî bû; wê hingê ew li serê tê cezakirin. Rewş wek hev e; kiryar çi li pêş û çi li paş bê. Ew kesê carekê heramekî bike, paşê çi dema hêza wî ser hebê li serê bi biryar bê; ew li ser gunehkirinê bibiryar e û ew li ser vê niytê tê cezakirin, çiqas ku ew ne vegerê bal karê xwe ve.

# HIN KAR Û BARÊN QELBÎ

**Nîyet:** Bi wateya qesd û vînê tê. Emelê bê niyet, ne durist e û nayê qebulkirin. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: ***"Birastî karûbar tenê bi gorî niyetan e û ji her merivî re ya niyet kirî heye."*** **(Muttefequn aleyh)** İbn mubarek (rehma Xwedê lê bê) gotiye: pir karûbarên biçûk hene niyet wan zêde dike û pir karûbarên mezin hene ku niyet wan biçûk dike. Fudeyl (rehma Xwedê lê bê) gotiye: Xwedê, bes daxwaza niyet û îradeya te ji te dikê. Vêca; eger emel ji bo Xwedê be; jê re îxlas tê gotin. Ev jî ew e ku emel ji bo Xwedê bê û para tu kesî tê de tunebê. Eger emel ne jibo Xwedê bê; jê re rîyakarî, yan nîfaq yan jî tiştekî dî tê gotin.

**Faydeyeke girîng:** Tevekê însanan di helakê de ne ji bilî aliman, tevekê aliman jî di helakê de ne ji bilî yên amilûn (yên pêemelkar), tevekê amilûnan jî di helakê de ne ji bilî yên muxlis. Li ser her bendeyekî ku îbadetê Xwedê bikê wezifeya ewil zanîna niyetê ye. Paşê, piştî têgihiştina rastî û îxlasê ew ê bi emelî tekûz bike. Emelê bê niyet zehmetî û meşeqet e. Niyeta bê îxlas riyakarî ye. Îxlasa bê tahqîq û bê niyet berba ye.

**Sê cure emel hene:**

**1- Emelên ku guneh in:** Di gunehkariyê de niyeta baş bi qesda qenciyê ew îbadet nayê qebulkirin; belkî dema qesdeke pîs bi bal ve bê dayîn gunehên wê zêde dibin.

**2- Emelên ku caiz in:** Her çiqas caizek ji tiştan hebe her tê de niyetek an çend niyet hene û eger bixwaze mimkun e ku ev bibin xêr.

**3- Emelên ku îbadet in:** Ev, di saxlemiya xwe de û zêdeyiya xêra xwe de girêdayê bi niyetê ve ye.[1] Eger niyeta riyakariyê bîne ew dibe guneh û şirka biçûk, carinan jî dibe şirka mezin. Ev jî li ser sê şeklan e:

**a-** Ew ê ku wî dajo ser îbadetkirinê ku di eslê xwe de ji bo dîtina mirovan be; ev şirk e û îbadetê wî jî pûç û betal e.

**b-** Emelê wî ji bo Xwedê ye, paşê niyeta riyakariyê lê pêde dibe; vêca eger îbadet dawî û serî bi hev ve ne girêdayîbe, mîna dana sedeqa; serê wê durist e û dawiya wê batil e. Eger dawî bi ewilê wê ve gir3edayîbe, mîna nimêjê, ew jî li ser du rewşan e:

**a-** Piştî ku riya kete dilê wî ew wê bavêje: Ev rewş li ser emelê wî birastî tu tesîrê nake.

**b-** Li ser riyakariyê ku dilê wî rûne: Wê hingê tevekê emelê wî pûç dibe.

**c-** Ku riyakarîya wî piştî emelî lê peyda bibe: Ha ev tasawasa şeytê ne; tu tesîra wê li ser emelî û li ser yê ku emel kiriye nake. Li vê derê hin deriyên riyayê ên bidizî hene ku lazim e me em wan nas bikin û xwe ji wan biparêzin.

**Yan jî eger ku qesda wî bi emelê salih qezenckirina dinyayê be; wê hingê xêra wî û gunehê wî li gorî niyeta wî ye, ev jî li ser sê rewşan e:**

---

[1] **Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiya:** *Ew kesê niyet bike ku qenciyekê bike û wî nekir; Xwedê jê re li cem xwe xêreke kamil dinivîse. Eger niyet bike û wê bike; Xwedê jê re li cem xwe deh xêran û heyanî heftsed qatî û qatên pir dinivîse. Ew kesê bi kirina neqenciyekê nyet bike, vêca neke; Xwedê li cem xwe jê re xêreke kamil dinivîse, na; eger niyet kir û niyeta xwe anî cih Xwedê jê re gunehekî tenê dinivîse*. **Muttefequn aleyh** **Pêxember gotiye**: *Mînaka vê umetê mîna rewşa çar merivan e: Mîna yekî ku Xwedê zanîn û mal dayê, vêca ew bi zanîna xwe di malê xwe de dixebite û bi heqqî wî xerc dike. Mîna yekî ku Xwedê zanîn dayê, lê belê mal nedayê, vêca dibêje: xwezî mîna flankes malê min jî hebane vêca min jî mîna wî tê de xebat bikira, pêxember dibêje: Ev her du meriv di xêrê de wek hev in. Mîna yekî ku Xwedê mal dayê lê belê zanîn nedayê, vêca ew di malê xwe noq dibe û bi ne heqqê wî xerc dike û yek heye Xwedê ne zanîn ne jî mal dayê, ew jî dibêje: eger mîna flankes malê min hebuya dê min jî mîna wî tê de bixebitame, Pêxember dibêje: ev her du jî di gunehkariyê de wekhev in* . **(Tirmizî)**

**1-** Ya ku wî diajo ser kirina emelê salih ku tenê dinye be; mîna yê ku îmamtiyê ji xelkê re bike ji bo pere bigre, ha ev gunehkar e. Pêxember (Selat û selam li ser bin) wiha gotiye: ***"Ew kesê ku lazim e ji bo Xwedê îlmekî fêr bibe, vêca ji bo hin malê dinyayê xwe fêr bike; roja qiyametê ew nagihije bîna cennetê jî."*** **(Ebu Dawûd)**
**2-** Emelkirina wî ku ji bo Xwedê û dinyayê be; ha ev kes kêmîman û kêmîxlas e. Mîna yê ku ji edakirina ferziyeta heccê û ji bo ticaretê here heccê; vêca xêra wî li gorî îxlasa wî ye.
**3-** Eger ku tenê ji bo Xwedê bike, lê belê tiştekî ji xwe re distîne da ku bikaribe wî karûbarî bikar bîne; wê hingê xêra wî bi serê xwe ye û bi sebeb ya ku digre xêra wî kêm nabe. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: ***"Birastî karûbarê ku hûn ucretê li serê distînin, ucreta herî heq a fêrkirina Kitêba Xwedê ye."*** *(Buxarî)*
Agahdarbe! Heçî ku xebatkarên muxlis ên ku ji bo Xwedê ne li ser çend dereca ne:
**1-** Dereca biçûk e; ji bo ku xêrê qezenc bike yan jî ji tirsa ezabê emel dike. **2-** Dereca navîn e; ji bo şukrê Xwedê bike û ji bo ku fermana Xwedê bicîh bîne emel dike. **3-** Dereca bilind e; ji bo hezkirin, mezinkirin, bilindkirin û heybeta Xwedê îbadetê dike ku ev jî merteba siddîqîna ye; mertebeya yên ku bê qeyd û şert bi Xwedê bawerî tînin.[1]

## TEWBE

**Tewbe,** berdewamî wacib e, lewra ketina gunehan ji siruşta însên e. Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje: ***"Zaroyên Adem hemî gunehkar in û qenctirînê gunehkaran yên tobeker in."*** *(Tirmizî)* Di fermodeyeke din de: ***"Eger we guneh nekiribana; Xwedê dê we ji holê bibirana û yê qewmekî din bixuliqanda ku wan guneh bikirana vêca dê wan ji ber vê yekê lêborîna gunehên xwe ji Xwedê bixwesta, êdî Xwedê jî dê ew bixefiranda."*** *(Muslim)* Texîrkirina tobê û berdewamiya li ser gunehan bêemriya Xwedê ye. Şeytan dixwaze yekê ji heft neqebqnan li hemberî însên biserkeve. Dema di yekê de biserneket ji bo ya di pey wê re hewl dide. Ew neqeb ev in:
**1-** DNeqeba şirk û kufrê ye. **2-** Eger di vê de bi serneket bi bid'eta di baweriyê de, bi terka lipeyneçûna Pêxember (Selat û selam li ser bin) û sehabiyên wî.
**3-** Eger di vê de jî biserneket bi kirina gunehên mezin biserde diçe.
**4-** Eger dîsa biserneket bi kirina gunehên biçûk biserde diçe.
**5-** Eger bi serneket bi kirina karûbarên durist (ên ku xêr ji wan nayê) biserde diçe.
**6-** Eger di vê de bi serneket bi kirina karûbarên ku xêra wan hindik e biserde diçe.
**7-** Eger dîsa biserneket vêca biserdebirina şeytanên cinnî û însî diçiyê de.

### Çend cure guneh hene:

**1- Gunehên mezin,** ew gunehên ku derbarî wan de di dinyayê de heddek (cizaadanek) heye, yan jî li axretê soza bi cizayê heye, yan jî soza bi xezebê, bi lanetê û nebûna îmanê heye.

---

1 Xwedê Teala di Qur'anê de derbarî Mûsa (*selama Xwedê li ser bê*) de: "Mûsa got: (*Xwedayê min! Min bi bal te ve lezkir da ku tu ji min razî bibe*)" **(Taha 84)** Vêca Mûsa ji bo civanê xwe yê bi Xwedê re lezkir da ku Xwedê jê razî bibe; ne ku tenê pêkanîna fermana Xwedê ye. Qenciya li dê û bavan jî wisa ye; Mertebeya kêm e; tu qenciyê li wan dike ji tirsa ezabê bêemriyê û ji bo daxwaza xêrê ye. Mertebeya nîvî; qenciyê li wan dikî ji bo ku emrê xwedê bicih bînî û qenciya ku wan li tekirî heyfê vegerinê; ji bo ku wan te biçûkayî perwerde kiriye û bûne sebebê hatina te ya dinyayê. Mertebeya bilind e: tu qenciyê li wan dike jibo ku fermana Xwedê ya bi qenciya li ser wan li ser xwe tu mezin dibîne û ji bo hezkirin û bilindkirina Xwedê ye.

**2- Gunehên biçûk,** ew gunehên ku dereca wan kêmî van e. Lê belê hin sebeb hene ku gunehên biçûk digihînin dereca gunehên mezin, ji wan ên giring ev in: Ku li ser kirina gunehên biçûk birijd be, wan dubare bike, wan biçûk bibîne, bi kirina wan xwe qure bike û bi aşkere li ber çavê xelkê bike.
Tewbeya ji her gunehî durist e. Ev tobekirin, heyanî roj ji rojava ve derkeve yan jî di sekerata mirinê de heyanî rih bigihije qırıkê. Xelata mirovê tobekar; eger ew di toba xwe de rest be, gunehên wî bi xêran têne tebdîlkirin, çendî ew ji pirahî bigihijin ber qarçê asîmanan jî.

**Ji bo qebûlkirina tobê hin şert û merc hene: 1-** Xwe ji kirina gunehan dûr bike. **2-** Li ser kirina yên berê poşman bibe. **3-** Bi ezm û rijd be ku careke din li wan nevegere. **4-** Eger ku guneh girêdayê bi mafê mirovan be; lazim e mafên wan li wan vegerîne.[1]

**Mirov derbarî tobê de çar tebeqe ne:**

**1-** **T**obekarekî ku heyanî dawiya umrê xwe li ser toba xwe disekine, ji bilî hin pîşemitandinên ku beşer nikare xwe ji wan xilaske naêxe dilê xwe ku ew li gunehan vegere. Ha ev, di tobê de rêka rast e û xwediyê vê tobê di kirina xêran de pêşîvan e. Navê vê tobê; toba nesûh e û ji vê nefsê re jî, **nefsa mutmeînneh** (nefsa aram û tenah) tê gotin.

**2-** Tobekarekî ku li ser kirina îbadetên sereke rasterê ye. Lê belê ji gunehên ku wî dikişînin bal xwe venaqetîne. Ne ku ji hemd dike, belê bi wan mubtela buye bêyî ku bi ezmekê wan bike. Her çiqas ew gunehekî bike, li nefsa xwe lome dike, poşman dibe û hewl dide ku xwe ji sedemên wan biparêze. Ji vê nefsê re **nefsa lewwam** e (nefsa li xwe lomeker) tê gotin.

**3-** Ew tobekarê ku mudetekî li ser toba xwe disekine, paşê şehweta wî li ser kirina hin gunehan zora wî dibe vêca wî diajo ser kirina gunehan. Lê belê digel vê jî li ser kirina îbadetê xwe berdewam e û digel ku hêz û dexwaza wî li ser kirina hin gunehan heye jî disa terka wan dike. Tenê daxwazek, du daxwaz zora wî dibin, vêca dema ew daxwaz bidawî hatin poşman dibe. Lê belê bi sedem kirina wan gunehan disa li toba xwe vedigere. Vêca ji vê re **nefsa mes'ûle** (nefsa berpirsiyar) tê gotin. Encama vê rewşê ji heysiyet paşdexistin û bikarneanîna tobê xetere; lewra gelek însan beriya tobe bikin dimirin. Birastî karûbar jî bi gori rewşa wi ya dawî tê nirxandin.

**4-** Ew ê ku tobe dike û mudetekî li ser riya rast dimîne, paşê li kirina gunehan vedigere bêyî ku tobeya ji gunehan bike dilê xwe û bêyî ku di dilê xwe de li ser kirina wan xemgîn jî bibe. Ji vê re **nefsa emmare** (nefsa ku bi nebaşiyê ferman dike) tê gotin û li ser vê rewşê merev ji aqîbeta wî ditirse.

## ◗ SİDQ Û RASTÎNÎ

**Rastîtî,** bingeha tevekê emelê qelban e. Peyva sidqê (rastîtî yê) di şeş wateyan de tê xebitandin: **1-** Rastiya di gotinê de. **2-** Rastiya di vîn û mebestê de ye (ev îxlas e). **3-** Rastiya di hewildanê de ye. **4-** Rastiya di pêkanîna erka xwe digel cidiyetê. **5-** Rastiya di emel de ye; ku emelê wî muwafiqî ya di dilê wî de bê, mîna tirsa di nava nimêjê de. **6-** Rastiya di misogergirina tevekê cihên dînî de ye. Ev dereceya herî bilind û ya herî birûmet e. Mîna rastiya di tirsê de, di daxwazê de, di mezinkirina Xwedê de, di zuhdê de, di rizayê de, di tewekulê de, di hezkirin de û di

---

1 Hatiye ragihandin ku Pêxember (silava Xwedê li ser be) gotiye:.........

tevekê karûbaran de ew ê ku bi dil ve girêdayî ne. Ew kesê ku di tiştên me gotî de bi rastiyê bê salixdayîn ew seddîq e (rastkirox e). lewra; ew di rastiyê de gihiştiye kemalê. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: ***"Lazim e hûn rastkiroxbin, rastî merivan bi ser qenciyê ve dike, qencî jî merivan bi ser behiştê ve dike. Dema mirov li ser rastiyê berdewam be û li rastiyê bigere, her ew li cem Xwedê seddîq (rastkirox) tê nivîsandin."*** **(Muttefequn eleyh)** Ew kesê heq jê re tevlîhev were, vêca di daxwaza xwe de ji Xwedê re rast be; pirê caran muwafiqî heqiyê tê. Eger muwafiq neyê jî Xwedê wî ma'zûr dibîne.

Dijê rastiyê derewkarî ye. Pêşî, dema derewkarî ji nefsê bi bal ziman ve sirayet dike wî xirab dike. Paşê ku bi bal azayan ve sirayet dike emelên wan xirab dike çawa ku gotina ziman xirab dike. Wê hingê derewkarî gotin û emel û rewşa wan digre, îcar li serê bi xirabiyê hukim dike.

## HEZKİRİNÎ

**Hezkirinî:** Bi hezkirina Xwedê û Pêxember (Selat û selam li ser bin) û muminan merev digihîje şîrîniya îmanê. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: ***"Sê tişt hene, ew di kê de mewcûd bin, ew digihîje şîrîniya îmanê:***

***1- Ew kesê ku Xwedê û Pêxemberê wî ji her kesî bêtir bi bal ve hezkirîtir be.***

***2- Ew ê ku ji merivekî hezkir ji bo Xwedê hezbike.***

***3- Ew ê ku piştî ku Xwedê wî ji kufrê xilas kiriye naxwazê ku dîsa bikeve kufrê çawa ku naxwaze bikeve êgir de."*** **(Muttefequn eleyh)**

Vêca dema dara hezkirinê di dilê xwe de çand û bi ava îxlasê û peyrewtiya Pêxember (Selat û selam li ser bin) avda; ew ê texlîtên fêkî ber bide û bi destûra Xwedê her dem dê berê xwe bide.

**Hezkirinî çar texlît in: 1-** Hezkirina Xwedê ye ku ew bingeha îmanê ye.

2- Hezkirina ji bo Xwedê û nehezkirina ji bo wî ye ku ev jî wacib e.[1]

3- Hezkirina digel Xwedê; ku merev di hezkirina wacib de digerên Xwedê jê re bike şerîk. Mîna hezkirina muşrikan ji pût û senemên wan re, ev jî bingeha şirkê ye.

4- Hezkirina tebî'î; mîna hezkirina dêwbavan, ya zarokan, ya xwarin û vexwarinê ku ev jî hezkirineke durist e. Ji bo ku Xwedê hez ji te bike di dinyayê de zahid be. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiya: ***"Di dinyayê de zuhdê bike Xwedê wê ji te hezbike."***

**(Ibn Maceh)**

## TEWEKKUL

**Tewekkul,** ew e ku merev di bidestxistina daxwazê û paşdeêxistina ya merev nevê de qelbê xwe bide ser Xwedê û xwe bispêriyê, digel ku bi Xwedê bawerbe û sedeman jî bikarbîne. Vêca; terka xwesipartina qelbî birîndariya tewhîdê ye û terka sedeman jî bêçareyî û bêaqilî ye. Cihê tewekkulê beriya xebatê ye û tewekkul meyweyê baweriyê ye. Tewekkul sê texlît in:

**1- Wacib e**: Ew a di ya ku ji bilî Xwedê hêz li serê tuneye xwe pispêre Xwedê, mîna şefakirina nexweşan.

**2- Heram e:** Ew jî li ser du beşan e:

1 Însan ji heysiyet hezkirin û nehezkirin (wela û bera) ve sê txlît in:

**a-** Tewekula ku şirka mezin e; ew a ku bi temamî xwe bisipêre sebeban ku ew sebeb bi serê xwe di bidestxistina menfeetê û paşdexistina zirarê de xwedantesîr in.[1]
**b-** Tewekula ku şirka biçûk e; mîna ku di rizq de îtîmada xwe berde ser yekî, bêyî ku ew bawer bike ku ew yek, bi serê xwe ku li ser riziqdayinê xwedantesîr be. Lê belê girêdana pê ji bilî baweriyê tenê sebeb e.
**c-** Tewekula ku durist e; ew a ku merev yekî bike wekîlê xwe û karekî ku hêza wî li ser heye îtîmadê berde ser. Mîna kirîn û firotanê. Lê belê ev ne durist e ku bibêje: Min tewekula xwe berda ser Xwedê û paşê berda ser te. Bila jê re viha bibêje: Mi tu kirî wekîlê xwe.

## ◗ ŞUKIR

**Şukir,** xuyakirina şûna qenciyên Xwedê li ser bende ye; di dil de bi baweriyê ye, li ser ziman pesindayîn e û li ser bedenê îbadetkirin e. Şukir (sipasî) bi dil, bi ziman û bedenê pêktê. Wateya şukrê; ku tu qenciyên xwedê ên li ser xwe di îbadetê Xwedê de bixebitînê.

## ◗ SEBIR (bênferehî)

**Sebir;** ji ber derd û elemê merev gilêhê xwe ji bilî Xwedê negihîne tu kesî din; tenê bigihîne Xwedê. Xwedê Teala ferman dike: "**Birastî Xwedê tenê xelata sebirkêşan bêhesab didiyê**." **(Zumer 1)** Pêxember (Selat û selam li ser bin) wiha gotiye: "***Çi kesê sebrê bikêşê Xwedê sebrê didiyê û ji tu kesî re ji dayîna sebrê bixêrtir û baştir qenciyek nehatiye dayîn***." ***(Muttefequn eleyh)*** Umer (Xwedê jê razî be) dibêje: "*Çiqas ku belayek hatibe serê min, her çar qencîyên Xwedê li ser min peyde dibin; yek ku musîbet ne di dinê min de ye, ne musîbeta herî mezin e, ez ji xêra pêrazîbûnê mahrûm nemam e û ez hêvî dikim li serê Xwedê qenciyê bide min.*"

**Çend mertebeyên sebrê hene: 1-** Sebra biçûk e, digel ku ji rewşa xwe neraziye gilehê xwe nake. **2-** Sebra navîn e; ji rewşa xwe raziye û gilehê xwe nake.
**3-** Sebra bilind e; ew ê ku li ser derd û bela hemdê Xwedê dike. Ew kesê zulm lê were kirin vêca li ser zulimkarê xwe nifira bike; wî arîkariya nefsa xwe kiriye, mafê xwe sitandiye û sebir nekişandiye.

**Sebir li ser di qisman e: 1-** Sebra bedenî ye, ev li vir ne mexseda me ye.
**2-** Sebra nefsanî ye, ew sebra ku li ser dilbijên û daxwazên nefsê ye.

**Tevekên tiştên ku mirov di dinyayê de pê re rûbirû dibe di tişt in:**
**1-** Ya ku muwafiqê daxwazên nefsê ye, êdî ew di pêkanîna heqê Xwedê de mıhtacê bal sebrê ve ye; ku şukrê Xwedê bike û tiştekî jê di gunehkariyê de xerc neke.
**2-** Yan jî ya ku pê re rûbirû dibe muxalifî nefsê ye, ew jî sê beş in:
**a-** Sebra li ser kirina îbadetê Xwedê ye. Wacibê wê; pêkanîna ferzên Xwedê ye. Mubahên wê; pêkanîna nafîleyan e.
**b-** Sebra li ser nekirina gunehan e. Wacibê wê; terka kiryarên heram e. Mustehebê wê; terka kiryarên mekrûh e.
**c-** Sebra li ser muqederatên Xwedê ye. Wacibê wê; girtina ziman ji şikayetkirinê, girtina dil ji liberabûn û xeyidandina li ser qedera Xwedê û girtina bedenê ji tişta ku Xwedê jê nerazî; mîna pirgirîn, cilqetandin, lixwexistin û xeyneê van. Mustehebê wê;

---

1 Ma gelo bikaranîna sebeban digel tewekulê nakokîyê bi hev re dikin?.......

razîbûna dil li ser tişta ku Xwedê qeder kirî ye.

**Gelo dewlemendê şakir çêtir e an feqîrê sabir?** Dema merivê dewlemend malê xwe di taetê Xwedê de xerc bike yan ji bo wê li hev kombike, wê hingê ew ji yê feqîr çetir e. Lê belê dema yê dewlemend pirê malê xwe di tiştên mubah de xerc bike wê demê yê feqîr çêtir e. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiya: ***"Xwarindayekî şakir di mertebeya rojîgirê sabir de ye.*** "*(Ahmed)*

## ◗ RAZÎBÛN (Qayilî)

**Razîbûn,** qayîlbûna bi ya ku Xwedê dayê û aboriya pê ye. Cihê wê; piştî rûdana kiryarê ye. Qayilîya bi qedera Xwedê ji bilindtirînê mertebeyên muqerribîna ye (ew ên ku nezî Xwedê ne). Ew jî ji fêkiyê mehebbet û tewekulê ye. Duakirina ji Xwedê ku ya nebaş li ser rake nakokiyê bi razîbûnê re nake.

## ◗ XUŞÛ (Tirs)

**Xuşû,** ew e ku merev Xwedê mezin bidêre, xwe jê re bişkîne û xwe jê re bitewîne. Huzeyfe gotiya: "Xwe ji xuşû'a bi munafiqî dûr bigrin." Gotin: Xuşû'a bi munafiqî çi ye? Got: Xuşû'a bi munafiqî ew e ku tu bedenê bi xuşû bibînê û dil ne bixuşû be. Huzeyfe got: Tişta ewil hûn ji dîn winda dikin xuşû'e. Kîjan îbadetekî ku xuşû tê de destpê kiribe; teqez xêra li serê bi qederê xuşû'a tê de ye. Mîna nimêjê; pêxember (Selat û selam li ser bin) derheqî nimêjkarî de gotiye: ji nimêja nimêjkarî jê re tune ji bilî nîvê wê, çaryeka wê, pêncyeka wê,.....û dehyeka wê; belkî bi sedema ku xuşû (tirsa Xwedê) bi temamî tê de nîn e, ji nimêja wî çu tişt jê re tune.

## ◗ RICA (Hêvîdarî)

**Rica,** meyzandina bal ferahiya rehmeta Xwedê ye. Dijê ricayê bêhêvîbûn e. Karekî ku li ser baweriya bi ricayê were kirin, dereca wî bilindtir e ji ya ku li ser tirsê bêtekirin. Lewra; rica, derheqî Xwedê de husn'u-zennê (gumana xweşik) peyde dike. Xwedê ferman dike: ***"Ez li cem zena bendeyê xwe me, ya derbarî xwe de.***"*(Muslim)* Ev jî di mertebe ne:

**1- Mertebeya bilind e:** Ew kesê ku îbadetekî bike û xêrê ji Xwedê rica bike; Aîşe (Xwedê lê razîbe) got: Ey Resûlê Xwedê: Ma wateya vê ayetê (وَالَّذِينَ يُؤْتُونَ مَا آتَوْا وَقُلُوبُهُمْ وَجِلَةٌ) ev e: Ewê ku diziyê dike, zinayê dike, eraqê vedixwe û ji Xwedê ditirse. Pêxember (Selat û selam li ser bin) got: ***"Na, ey keca Seddîq; belkî ew ên ku nimêj dikin, rojî digirin, zekatê didin û ew ditirsin ku ji wan neyê qebûlkiri***n "**ha ew di karê xêrê de dilezînin.**"(Tirmizî)

**2- Mertebeya biçûk e:** Ew gunehkarê ku lêborîna Xwedê rica dike. Heçî gunehkarê ku li ser kirina gunehan birijd e, ew ê ku tobe nake û rehmeta Xwedê rica dike; ha ev, hêvî ye; ne rica ye. Ev texlît rewş mezmûm (nebaş) e û ya ewil mahmûd (baş) e. Mirovê bawermend qenciyê dike û ji Xwedê ditirsê, mirovê munafiq xerabiyê dike û xwe êmin dibîne.

## ◗ XEWF (Tirs)

**Xewf,** xemgîniya nefsê ye bi sedema ku bikeve nebaşiyê. Eger ew nebaşî yeqîn were zanîn, ew xewf (tirs) e. Dijê wê êminahî ye. Xwef ne dijê ricayê ye; belkî xwef, bi riya tirsê daxwaz dike. Rica bi riya xweziyê daxwaz dike. Lazim e ku di navbera mehebbet, xwef û ricayê de lihevbanînek bikar were. Ibn Qeyyim dibêje: "Qelb (dil), di seyra xwe ya bi bal Xwedê ve mîna teyr e; Mehebbet serê wî ye,

xewf û rica baskê wî ne. Vêca çi dema xewfê (tirsê) dil rawestand û tena kir; cihê şehwetê jê şewitand û dinya ji navê avêt.

**Xewfa wacib:** ew a ku wî dajo ser kirina kiryarên wacib û dajo ser terkirina kiryarên heram.

**Xewfa musteheb:** ew a ku wî dajo ser kirina kiryarên musteheb û dajo ser terkirina kiryarên nebaş.

**Tirsa ji xeynî Xwedê çend texlît in: 1-** Tirsa ku şirka mezin e, ew tirsa bidizî û ya ku ji hurmet û mezinahî ye, mîna tirsa ji îlahên muşrikan ku ew zirarê bidin yan tiştekî nebaş bigihînin wan. Digel ku lazim e ku ev reng tirs ji bo Xwedê tenê bê.

**2-** Tirsa ku şirka biçûk e, ew a ku ji tirsa mirovan wacibek neyê kirin yan jî heramek were kirin.

**3-** Tirsa ku durist e, ew tirsa tebî'î ye ya ku ji guran û xeynî wan ditirs e.

## ◗ ZUHD (destkêşiya ji dinyayê)

**Zuhd,** merev daxwaza xwe ji tiştekî bi bal tiştekî ji wê çêtir ve bide alî. Zuhd, di dinyayê de dil û bedenê rehet dike. Rexbeta tê de kul û kovanan zêde dike. Hezkirina dinyayê serê her gunehî ye û rika jê sebebê her taetê ye. Zuhda di dinyayê de ew e ku tu dinyayê ji dilê xwe bavêje; ne ku tu wê ji destê xwe bavêjê û dilê te pê ve girêdayîbe -ev zuhda nezana ye-. Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje: ***"Malê baş çiqas baş e ji bona merevê baş."****(Ahmed)*

**Ji bo merevê feqîr digel malê dinyayê pênc rewş hene:**

**1-** Ew, ji ber ku rika wî jê tê û ji ber ku ji xerabiya wê û mujilbûna pê xwe biparêze ji giritina mal direve, ji xwediyê vê rewşê re zahid tê gotin.

**2-** Ew ê ku bi destkevtina mal dilxweş nabe û bi aciziyeke ku wî biêşîne jî aciz nabe, ji xwediyê vê rewşê re yê razî (qayîl) tê gotin.

**3-** Ew ê ku bi sedem dilxwaziyeke wî ku tê de heye ji tunebûna mal bêhtir ji hebûna wî hezdike. Lê belê ev dilxwazî negihiştiye wê derecê ku ji bo xwestina wê xwe reht bike; belkî, eger bêxebat jê re were, wê digre û pê dilxweş dibe. Na, eger di telbekirina wî de hewceyî bal zahmetiyê be, pê nalebike, ji xwediyê vê rewşê re jî qani' (merevê qenaetkar) tê gotin.

**4-** Ew ê ku terka mal kiriye ji ber ku nikare bidestbixe. Eger ne ji ber vê be jê re dilxwaz e. Eger bi zehmetî jî rêyekê ji telbekirina wî re bibîne ew ê teleb bike, ji xwediyê vê rewşê re herîs (rijdekar) tê gotin.

**5-** Ew ê ku hewcedarê bal ya ku daxwaza telbekirinê dike; mîna yê birçî û tazî ku hewcedarê bal xwarin û cilan ve ne, ji xwediyê vê rewşê re mudter (hewcedar) tê gotin.

# HEVPEYİVÎNEKE ARAM

**(Di navdanînê de alîdana evdîtiyê ne bi bal Xwedê ve)**

Zilamek hebû, navê wî **Ebdûllah** bû. Ew li zilamekî din rast tê. Navê wî jî **Ebdûnnebî** ye. Ebdûllah di dilê xwe de ji vî navî hez nekir û got; çawa dibe ku mirovek ji bilî Xweda, ji kesekî din re îbadetê bike? Paşê bi Ebdûnnebî re peyivî û jê re got: Ma tu ji bilî Xweda, ji kesekî din re îbadetê dikî? Ebdûnnebî jê re got; na, ez ji bilî Xweda ji kesekî din re îbadetê nakim. Ez misliman im. Ez ji Xweda tenê re îbadetê dikim.

**Ebdûllah** got: Naxwe, ev çi nav e ku dişibihe navên nesranîyan. Lewra ew jî navê wekî Ebdûlmesîh li xwe dikin. Lêbelê di navên wan de ti ğerabet (tiştekî ku neyê fehmkirin) nîn e. Lewra nesranî ji Îsa -eleyhisselam- re îbadetê dikin. Ewê ku navê te seh bike, pêşî ev dikeve bîra wî ku tu îbadetê Peyxamber -sellellahû eleyhî wesellem- dikî. Ev jî ne bawerîya mislimanî ya di bara peyxamberê wî de ye. Lêbelê li ser mislimanî wacib e; bawer bike ku Mûhemmed evdê Xweda û peyxamberê wî ye.

**Ebdûnnebî** got: Lêbelê Mûhemmed peyxamber qenctirê mirovan û mezinê peyxamberan e. Ji lewra em ji bo teberukê vî navî li xwe dikin da ku em bi şerefa wî û bi meqamê wî yê bilind li cem Xweda, xwe nêzî Xweda bikin. Ji ber wê em şefa'etê ji wî dixwazin. Tu vî navî xerîb nebîne. Lewra navê birayê min jî **Ebdûlhuseyn** e. Beriya wî jî navê bavê wî Ebdûrresûl bû. Li xwe kirina van navan adetekî kevin e, ew li navbera mirovan jî belav bûye. Me bav û kalên xwe jî dîtine ku ev nav li xwe dikirin. Naxwe di vê mijarê de xwe kûr bernede. Lewra rewş hêsan e. Dîn jî sehl û hêsan e.

**Ebdûllah** got: Ev munkereke din e. Ji munkera pêşî mezintir e. Lewra tu, tiştekê ji bilî Xweda ji yekî din dixwazî ku ji Xweda pê ve kesek nikare wê tiştê bike. Hîç ferq nake; çi ew kesê ku ew tişt jê tê xwestin Mûhemmed peyxamber bi xwe be, çi jî mirovekî kêmî wî ji salih û qencan be. Her wekî Huseyn (Xwedê jê razî be) û dîgerên wî jî. Ev dijê bawerîya Tewhîdê ye. Ewa ku Xweda bi bawerkirina wê emr li me kiriye. Ew dijê me'neya **Laîlaheillellah** e. Bi destûra te, ez dixwazim hinek pirsan li cenabê te erz bikim. Da ku mezinbûna xetera vî karî û encama xirab ya li xwe kirina vî navî û yên wekî wî ji te re diyar bibe. Ji bilî eşkerekirina heqiyê û lipeyçûna heqiyê, beyankirina batil û xwe dûrkirina ji wî û şîreta qenciyê û mena neqenciyê pê ve ti armanc û daxwazeke min ya din nîn e. Xweda bi tenê ye, ewê ku arîkarî jê tê xwestin û mirov tewekkula xwe berdide ser wî. Ti îmkana ku mirov ji gunehan vegere û qeweta ku mirov li ber Xweda tobe bike jî nîn e; eger dîsa ne bi arîkarîya Xweda be. Lêbelê ez dixwazim beriya her tiştê vê gotina Xweda bînim bîra te: Xweda dibêje: **"Dema ku bawermend bi bal hukmê Xwedê û Pêxemberê wî ve bêne vexwendin da ku (Pêxember) di nav wan de hukim bike, gotina wan bes ev e: Me (fermana te) seh kir û me qebûl kir. Vêca ha ev, ên ku di daxwaza xwe de serfiraz bûne."** *Nûr 51.*

Di ayeteke din de jî Xweda dibêje: **"Êdî eger we der heqê tiştekî (lêqewmînekê) de hev rakişand -vêca eger bi rastî hûn bi Xwedê û bi roja axretê bawer in- wê bibine ber (kitêba) Xwedê û (hedîsa) Pêxember. Ev a ha (ji we re) çêtir e û dûmahîka wê rindtir e."** *Nîsa,59.*

**Ebdûllah:** Te, got, ez tewhîda Xweda dikim û ez şehde didim ku ji Xweda pê ve ti îlahê bi heqiyê nîn in. Ji kerema xwe, tu dikarî me'neya wê ji min re îzah bikî?

**Ebdûnnebî**: Tewhîd, ew e, tu îmanê pê bînî ku Xweda mewcûd e. Wî erd û asîman

xuliqandine. Ew sax dike û dimirîne. Ew di kaînatê de teserrufatiyê dike. Ew rizq dide, ew bi her tiştan dizane, ji wan agahdar e, ew li ser kirina hemû tiştan qadir û kare ye.

**Ebdûllah**: Eger Tewhîd ev tenê bûna, dê Firewn û qewmê xwe û Ebûcehl û dîgerên wan jî ehlê tewhîdê bûna! Lewra wan jî wekî pirranîya mûşrikan ev tişt dizanîya. Ew Firewnê ku ji bo xwe doza Rebbîtiyê dikir, wî jî hebûna Xweda îtîraf dikir û di dilê xwe de bawer dikir ku Xweda mewcûd e. Ew e, yê ku di kaînatê de teserrufatiyê dike. Delîla vê gotina min jî ev ayet e: **"Wan ji ber zilm û quretiya xwe mucîze înkar kirin, hal ev e ku wan ji qinyata dilê xwe bawer kiriye ku ev (mucîze rast û) heq in. De tu binêre encama mufsidan ka çawa bû!"** *Neml, 14.*

Heta dema wî dikir ku ğerq bibe, bi awayekî eşkere ev îtîraf jê xuya bûbû. Lêbelê di heqîqeta xwe de ew tewhîda ku ji bo eşkerekirina wê peyxamber hatine şandin, kitêb hatine nazilkirin û ji bo wê şerrê Qureyşîyan hatiye kirin ev e: Yekkirina Xweda ya di îbadetê de ye. Îbadet navekî berfereh e. Ew di nava xwe de hemû gotin û kirinên zahirî û batinî yên ku Xweda jê hez dike û pê razî dibe, kom dike. Ew îlahê di "La **îlahe** illellah" de jî me'neya wê ev e: Ew mebûd e ku îbadet bes ji wî tenê re çêdibe.

**Ebdûllah**: Tu dizanî çima peyxamber li sererdê hatine şandin û ewwelê wan jî Nûh -eleyhisselam- e?

**Ebdûnnebî**: Ji bo mûşrikan gazî îbadetê Xweda tenê bikin û wan gazî şemirandina her şirîkê wî bikin.

**Ebdûllah**: Sebebê şirka qewmê nûh çi bû?

**Ebdûnnebî**: Ez nizanim!

**Ebdûllah**: Dema qewmê wî xwe di bawerîya bi salihên wekî Wed, Suww'a, Yeğûs, Yeûq, Nesr de berda, Xweda Nûh ji wan re şand.

**Ebdûnnebî**: Ma tu dibêjî; Wed, Suww'a û dîgerên wan jî ev hemû navên zilamên salih bûn û ew ne navên zalim û kafiran e?

**Ebdûllah**: Erê. Ev navên zilamên salih bûne. Qewmê Nûh ew ji xwe re îlah qebûl dikirin. Di îbadetê wan de Ereb jî li dûv wan çûne. Delîla vê jî ew rîwayet e ku ji Îbnebbas hatiye. Wî gotiye: "Paşê ew pûtên ku li nav qewmê Nûh hebûn, ew li nav Ereban jî peyda bûn. Herçî Wedd bû, ew li Dûmetul Cendelê pûtê êla Kelb bû. Herçî Suw'a bû, ew pûtê êla Huzeyl bû. Herçî Yeğûs bû, ew pûtê êla Murad bû, paşê bû pûtê êla Benûğuteyf jî li Curufê, li cem Seb'ê. Herçî Ye'ûq bû, ew pûtê êla Hemdan bû. Herçî Nesr bû, ew pûtê êla Hîmyer, ehlê Zulkel'a bû. Ew li nav qewmê Nûh navê hinek zilamên salih bûn. Çi dema ew mirin. Şeytan weswese ji qewmê wan re çêkir ku hinek resiman li dîwanên xwe yên ku tê de rûdiniştin biçikînin û navên wan salihan li wan bikin. Wan jî resimên wan çikandin. Lêbelê îbadetê wan nedikirin. Paşê dema ew jî mirin û zanîn ji navbera wan rabû, êdî ji wan re îbadet hate kirin." Buxarî rîwayet kiriye.

**Ebdûnnebî**: Ev gotineke balkêş e!

**Kafirên Qureyşîyan jî îbadet ji Xweda re dikirin!**

**Ebdûllah**: Ma ez tiştekî ji wê balkêştir jî ji te re nebêjim? Ya ji wê balkêştir ev e ku tu bizanî Xweda, paşîvanê peyxamberan mezinê me Mûhemmed (Selat û selam li ser bin) bi peyxambertî ji qewmekî re şandibû ku îstiğfar dikirin, 'îbadet dikirin, tewafa Beytê

dikirin, Sa‘ya Sefa û Merwe’yê dikirin, heca xwe dikirin û sedeqeyên xwe jî didan. Lêbelê wan hinek mexlûqat di navbera xwe û Xweda de dikirin wasîte û navgîn û digotin: Em ji wan “xwe nêzîkkirina cem Xweda” dixwazin û em ji wan dixwazin ku şefa‘eta me li cem Xweda bikin. Her wekî melaîketan, Îsa -eleyhisselam- û salih û qencên dîgerên wan jî. Vêca Xweda Mûhemmed (Selat û selam li ser bin) ji wan re şand da ku dînê bavê wan Îbrahîm (*eleyhisselam*) ji wan re nûjen bike û ji wan re bide zanîn ku ev xwe nêzîkkirin û bawerkirin heqekî taybet yê Xweda ye. Tiştek ji wê, ji bo dîgerên Xweda çênabe! Xaliq her Xweda bi tenê ye. Ti şirîkê wî nîn in. Ji wî pê ve ti raziq jî nîn in. Heft asîman û mexlûqatên ku di wan de hene. Heft erd û mexlûqatên ku di wan de hene, hemû bende û evdên Xweda ne. Ew di jêr teserrufatî û qudreta Xweda de ne. Heta ew pûtên ku mûşrik wan diperêsin jî îtîraf dikin ku ew jî di jêr desthilatî û teserrufatiya wî de ne.

**Ebdûnnebî**: Ev gotineke pirr bi xeter û balkêş bû. Gelo ti delîlek li ser heqbûn û rastbûna wê heye?

**Ebdûllah**: Delîl zehf in. Hema yek ji wan ev ayet e: “***Bibêje: Ew kî ye ku ji erd û asîmanî rizqê we dide? Yan jî ew kî ye ku dikare guh û çavan biaferîne? Ew kî ye ku dikare ji yê sağ, yê mirî, ji yê mirî jî yê sağ derêxe? Ew kî ye ku karên aferandinê birêve dibe? Ew ê bibêjin: Ellah e! Bibêje: Heke wisa ye, nexwe çima hûn xwe jê naparêzin?***” ***Yûnus, 31.***

Hema yek ji wan jî ev ayet e: **“*Bibêje: Heke bi rastî hûn dizanin, ev dinya û yên ku tê de hene, yên kê ne? Ewê bibêjin: "Yên Ellah in!" Bibêje: Madem wisan e, nexwe çima hûn eqil nagirin?! Bibêje: Xwedayê asîmanên heft tebeq û Xwedayê ‘Erşê Mezin kî ye? Ewê bibêjin: Ellah e! Bibêje: Nexwe ma hûn ji wî natirsin? Bibêje: Heke bi rastî hûn dizanin, ewê ku mulkiyet, desthilatî, tedbîr û gera her tiştê di destê wî de ye û ewê ku her tiştê diparêze û ew ne hewceyî parastinê ye, kî ye? Ewê bibêjin: Yên Ellah in!" Bibêje: Nexwe çawa hûn têne xapandin?*”**

***Mu’mînûn, 84-89.***

Bi rastî mûşrikan di hecê de telbîye jî dikirin û digotin: “*Lebbeyke Ellahumme lebbeyke! Lebbeyke laşerîke leke, illa şerîken huwe leke, temlîkuhu, wema melek.*” (Xwedayê min! Em li ber fermana te amade ne. Em li ber fermana te amade ne û ti şirîkê te jî nîn in. Meger şirîkek tenê heye, ew jî ji te re ye, tu xwediyê wî yî, ew bi xwe ne xwediyê tiştekê ye!) Nexwe îtîrafkirin û qebûlkirina mûşrikên Qureyşîyan ku Xweda di kaînatê de teserrufatiyê dike, yan jî ewa ku “**Tewhîda Ribûbîyetê**” tê binavkirin ew nexistine dînê Îslamê. Ew qesda wan ya ku melaîket, peyxamber û salih dê şefa‘eta me li cem Xweda bikin û em bi wasîteya wan xwe nêzîkî Xweda dikin jî ew bû ku xwîna wan û malên wan helal kiribû. Ji ber vê yekê lazim e ku mirov hemû gazî û dû‘ayên xwe ji Xweda tenê bike. Mirov nezrên xwe ji bo Xweda tenê bide. Mirov qurbanên xwe ji bo Xweda tenê serjêke. Mirov îstî‘ane û arîkariyê ji Xweda tenê bixwaze. Mirov temamê cure û celebên îbadetê ji Xweda tenê re bike.

**Ebdûnnebî**: Çawa ku tu dibêjî û îddî‘a dikî, heke tewhîd ne îqrarkirina bi hebûna Xweda û teserrufatîkirina wî ya di kaînatê de be, naxwe tewhîd çi ye?

**Ebdûllah**: Tewhîd, ewa ku ji bo bicihkirina wê peyxamber hatine şîandin û mûşrik jî li ber îqrarkirina bi wê asê dibûn û ew qebûl nedikirin, ev e; yekkirina Xweda ya di

îbadetê de ye. Tu cure û celebên îbadetê ji bo dîgerê Xweda çênabin! Her wekî dû‘a, nezr, qurban serjêkirin, îstîğase (hewar-xwestin), îstî‘ane (arîkarî-xwestin) û dîgerên van jî ji bilî Xweda ji bo kesekî din çênabin! Ha ev tewhîd e, me‘neya gotina te ya "**Laîlaheillellah**." Lewra li cem mûşrikên Qureyşîyan jî ji **îlah** meqsûd ev îbadet bûn. Hîç ferq nake, çi ew îlahê ku ew jê re tên kirin hukmdarek be, çi peyxamberek be, çi welîyek be, çi darek be, çi qebrek be, çi jî cinîyek be. Wan bi peyva **îlah**, xaliq, raziq û mudebbir qesd nedikir. Lewra wan dizanîbû ku ew ji Xweda tenê re heye. Çawa ku me berê jî ew gotibû. Vêca peyxamber (Selat û selam li ser bin) hate cem wan û ew gazî qebûlkirina kelîmeya tewhîdê "**Laîlaheillellah**" û tetbîqkirina me‘neya wê jî kirin; ne ku ew gazî bilêvkirin û teleffuzkirina wê tenê kirin.

**Me‘neya Laîlaheillellah**

**Ebdûnnebî**: Her wekî ku tu dixwazî bibêjî: Mûşrikên Qureyşîyan ji gelek mislimanên zemanê me bêhtir maneya "Laîlaheillellah" dizanîn?

**Ebdûllah**: Belê, wisan e. Mixabin, ev rastîyeke xemnak e! Lewra kafirên serdema cahiliyetê dizanîbûn ku ji vê peyvê meqsûda Peyxamber (Selat û selam li ser bin) "yekkirina Xweda ya di îbadetê de, înkarkirina pûtên ku ji bilî Xweda îbadetê wan dihate kirin û xwe bêrîkirina ji îbadetê şirkê ye." Lewra çi dema wî ji wan re got, bibêjin: "Laîlaheillellah", wan got: "***Ma ew, me‘bûdan dike yek îlah? Bi rastî ev tiştekî pirr ecêb e!***" *Sad, 5*; digel ku bawer dikirin, Xweda tenê di kaînatê de teserrufatiyê dike jî. Naxwe dema kafirên serdema cahiliyetê ev zanîbûn, ya balkêş û xerîb ev e; hinek mirovên ku ji bo xwe Îslamê îddîa dikin, ji wê şîrove û tefsîra vê peyva tewhîdê ya ku kafirên serdema cahiliyetê zanîbûn, ew nizanin! Heta ji vê jî kambaxtir ev e; ew zen dike ku teleffuzkirina bi herfên wê bêyî bi qelbê xwe bawerkirina tiştekê ji me‘neya wê tewhîd e û ew ji bo mislimanbûnê kafî ye. Ji navbera wan, helbet mirovê mahir û pispor dizane ku ji Xweda pê ve ti kes nikare tiştan bixuliqîne, rizqê mexlûqan bide û karûbar bigerîne û birêve bibe. Nexwe xêr di wan mêran de nîn e ku ji bo xwe Îslamê îddî‘a dikin. Halev e ku nezanên kafirên Qureyşîyan jî ji wan bêhtir me‘neya **Laîlaheillellah** dizanîbûn!

**Ebdûnnebî**: Lêbelê ez bi xwe şirîkan ji Xweda re çênakim. Ez şehde didim ku ji Xweda pê ve kesekî din nikare tiştan bixuliqîne, nikare rizqê mexlûqatên xwe bide, nikare menfî ‘etê bide mexlûqatan û nikare zirarê bide dijberên xwe û zirarê ji ser xwe û dostên xwe rake jî. Ji Xweda re ti şirîk nîn in. Mûhemmed jî nikare menfî‘etê bide xwe û zirarê ji ser xwe rake. Ji xwe tu ji ‘Elî, Huseyn, Ebdûlqadir û dîgerên wan behs neke ku ew karibin tiştekê ji van karan bikin. Lêbelê ez mirovekî gunehkar im. Herçî qenc û salih in, li cem Xweda şan û şerefa wan heye. Ez ji wan dixwazim ku bi şan û şerefa xwe li cem Xweda şefa‘eta min bikin.

**Ebdûllah**: Ezê ji wan mirovên ku berê derbas bûne, bersiva te bidim. Herçî ew kesên ku Peyxamber (Selat û selam li ser bin) şerrê wan dikir, wan jî ev tiştên ku te gotin, îqrar dikirin û dîsa îqrar dikirin ku pût û senemên wan jî nikarin tiştekê bigerînin û birêve bibin. Lêbelê wan jî ji wan dixwest ku bi şan û şerefa xwe li cem Xweda şefa‘eta wan bikin. Ji xwe beriya niha jî me li ser pûçbûna vê îddî‘a’ya wan ji Qur’anê delîl anîbûn.

**Îbadetê pût û salihan, gunehê wê yek e!**

**Ebdûnnebî**: Lêbelê ev ayet di bara pûtperestan de nazil bûne. Ew mûşrikên ku ji bilî Xweda îbadet ji seneman re dikirin. Vêca hûn çawa peyxamber û salihan dikin wekî pût û seneman?

**Ebdûllah**: Beriya niha jî me îttîfaq kiribû ku hinek ji wan pût û seneman navên qenc û salihan li wan hatibû kirin. Çawa ku di serdema Nûh -eleyhisselam- de ev wisan bû. Ji xwe kafiran bi perestina wan pûtan bes ji wan dixwestin ku ew li cem Xweda şefa'eta wan bikin! Lewra bawer dikirin ji wan pût û senemên wan re li cem Xweda meqam û şanekî mezin heye. Delîla vê heqîqetê jî ev ayet e: "***Herçî ewên ku ji bilî Xwedê ji xwe re dost û arîkaran digrin û dibêjin: Em bes da ku me nêzî Xwedê bikin wan diperêsin!***"*Zumer, 3*. Herçî ev gotina te ye: Vêca hûn çawa peyxamber û salihan dikin wekî pût û seneman? Em dibêjin: Ew kafirên ku peyxamber (Selat û selam li ser bin) ji wan re hatibû şandin, wan jî gazî welî û dostên xwe dikir. Xweda di bara wan de dibêje: "***Ha ew, gazî wî dikin û bi bal Xwedayê xwe ve li wesîle'yê digerin ka kî ji wan nêzîktir e, rehma wî hêvî dikin û ji 'ezabê wî ditirsin. Lewra 'ezabê Xwedayê te divê jê were tirsîn.***" Hinek ji wan hebûn ku gazî Îsa (*eleyhisselam*) û dêya wî dikirin. Xweda di bara wan de jî dibêje: "***Di bîra wan bîne dema Ellah bibêje: Hey Îsa kurê Meryemê! Ma te ji mirovan re got: Min û dêya min ji bilî Ellah, du îlah wergirin. Ew jî dibêje: Haşa! Ez te ji hemû kêmasiyan pak didêrim, ne heqê min e, ya ku ji min re ne durust be ku ez bibêjim. Eger min ew gotibe, bêguman tu pê dizanî. Tu, ya di dilê min de dizanî û ez tiştekê ji nehêniyên te nizanim. Bi rastî her tu yî, zanayê bi nehêniyan.***"*Maîde,116*. Hinek ji wan jî hebûn ku gazî melaîketan dikirin. Xweda di bara wan de jî dibêje: "***Di bîr bîne; wê roja ku Xwedê pûtperestan li hev kom dike, piştre ji ferîşteyan re dibêje: Ma ev bûn yên ku ji we re îbadet dikirin? Ew dibêjin: Tu pak û bilind î, dost û piştevanê me tu yî; ne ew in. Belkî wan perestina cinan dikir. Pirrên wan bi cinan bawerî anîbûn.***"*Sebe 40-41*. Vêca ji kerema xwe, tu van ayetan bifikre û bibîne, çawa Xweda, ewên ku qesda seneman kirine û ewên ku qesda qenc, salih û peyxamberan jî kirine, tev wekeh tekfîr kirine. Peyxamber (Selat û selam li ser bin) jî şerrê wan tevan kiriye û ti ferq nexistiye navbera wan.

**Ebdûnnebî**: Lêbelê herçî kafir bûn, hêvîya menfî'etekê ji wan dikirin. Herçî ez im, ez şehde didim ku Xweda bi tenê dikare menfî'etê bide mirov, zirarê ji ser mirov rake û karûbaran birêve bibe. Ez van tevan ji Xweda tenê dixwazim. Ti karûbar ne di destê salihan de ye. Lêbelê ez ji wan şefa'eta wan ya li cem Xweda dixwazim.

**Ebdûllah**: Ev gotina jî bêferq û cudahî kafiran bi xwe jî ew gotibû. Delîla vê jî ev ayet e: "***Ew, di şûna Xwedê de yên ku ne dikarin xerabiyê bidin wan û ne jî dikarin feydê bidin wan dihebînin û dibêjin: Ev, li cem Xwedê mehdervanên me ne. (Resûlê min! Ji wan muşrikan re) Bibêje: Erê ma hûn a ku li erd û asîmanan Xwedê pê nizane, vêca hûn wî pê agahdar dikin?! Haşa! Xwedê, pak û bilind e ji wê şirka ku ew dikin.***" *Yûnus, 18*.

**Ebdûnnebî**: Lêbelê ez ji bilî Xweda ji kesekî din re îbadetê nakim. Xwe avêtina ber penaha wan û gazîkirina wan jî hîç ne îbadet e!

**Ebdûllah**: Lêbelê ez jî vê ji te dipirsim; gelo tu îqrar dikî ku Xweda li ser te ferz kiriye; tu bi îxlas îbadetê ji wî tenê re bikî û heqê Xweda jî li ser te ew îbadetê ji wî

re ye? Çawa ku Xweda di ayetekê de dibêje: **"*Hal ev e ku ferman li wan hatibû kirin ku ew bes bi dilsadeyî ji Xwedê tenê re 'îbadetê bikin û li ser dînê pak, yê rast û durust bimînin*."** *Beyyîne, 5.*
**Ebdûnnebî**: Erê, Xweda ew li ser min ferz kiriye.
**Ebdûllah**: Ji xwe ez jî ji te dixwazim; tu vî îbadetê Xweda li ser te ferz kirî ku îbadetê xalis e, ji min re îzah bikî?
**Ebdûnnebî**: Min fehm nekir, tu ji vê pirsê çi qesd dikî. Ji kerema xwe ji min re bi zelalî beyan bike.
**Ebdûllah**: Ji kerema xwe li min baş guhdarî bike, ezê ji te re beyan bikim. Xweda dibêje: **"Bi zarezar û dizî gazî Rebbê xwe bikin. Bi rastî ew ji tixûbbuhêran hez nake."** Gelo gazîkirina ji Xweda dibe îbadet, yan jî na?
**Ebdûnnebî**: Ew dibe îbadet. Hem jî koka îbadetê ye. Çawa di hedîsê de hatiye beyankirin: "*Gazîkirin îbadet bi xwe ye*." Ebûdawud rîwayet kiriye.
**Ebdûllah**: Madem tu bi xwe îqrar dikî ku gazîkirin îbadet e. Paşê ji bo bidestxistina hewcehîya xwe tu bi şev û rojê û bi tirs û bi hêvî gazî Xweda dikî. Paşê jî ji bo qezenckirin û bidestxistina heman îhtiyacê tu gazî peyxamberekî, yan melaîketekî, yan jî salihekî di qebra wî de dikî. Gelo te di vî îbadetê xwe de şirk çêkir, yan na?
**Ebdûnnebî**: Belê, min şirk çêkir. Gotina te sehîh û eşkere ye.
**Ebdûllah**: Ji vê re nimûneyeke din jî heye. Dema tu gotina Xweda hîn bibî: **"*Ji bo vê yekê, ji Rebbê xwe re nimêj bike û qurbanê serjêke*."** *Kewser, 2.* Paşê tu di vê fermanê de bi xebera Xweda bikî û qurbanê serjêkî. Gelo ev qurbana te ji Xweda re dibe îbadet, yan jî na?
**Ebdûnnebî**: Belê, ew dibe îbadet.
**Ebdûllah**: Heke tu bi Xweda re ji bo mexlûqekî din jî qurbanê serjêkî, ew mexlûq çi peyxamber be, çi jî cinîyek be. Gelo te di vî îbadetî de ji bilî Xweda yekî din jî jê re kire şirîk, yan jî na?
**Ebdûnnebî**: Belê, bêguman ew şirk e!
**Ebdûllah**: Min ji gazîkirin û qurban serjêkirinê mîsal ji te re anî. Lewra gazîkirin saxlemtirînê cureyên îbadetê qewlî ye. Qurban jî saxlemtirînê cureyên îbadetê fiilî ye. Îbadet ne ku ev herdu bi tenê ne. Ew ji van berferehtir e. Nezr, sond, îstî'aze, îstî'ane îstîğase û dîgerên wan jî dikevin bin îbadetê. Lêbelê gelo ew mûşrikên ku Qur'an di bara wan de hatibû xwarê, ji melaîket, salih, Lat û dîgerên wan re jî îbadet dikirin?
**Ebdûnnebî**: Belê, mûşrikan ew dikir.
**Ebdûllah**: Gelo îbadetê mûşrikan ji wan re ji gazîkirin, qurban serjêkirin, îstî'aze, îstî'ane îstîğase û xwe avêtina ber penaha wan pê ve tiştekî din hebû? Na. Naxwe wan jî îqrar dikir ku ew evdên Xweda ne û ew di jêr desthilatî û teserrufatiya wî de ne. Wan jî îqrar dikir ku Xweda karûbaran birêve dibe. Lêbelê ji bo şan û şerefa wan gazî wan mexlûqan dikirin û xwe diavêtin ber penaha wan da ku li cem Xweda mehder û şefa'eta wan bikin. Ev heqîqet ji xwe zehf zelal û xuya ye.
**Şefa'et ji kê re heye?**
**Ebdûnnebî**: Ya **Ebdûllah**! Qey tu înkara şefa'eta Peyxamber (Selat û selam li ser bin) dikî û tu xwe jê bêrî dikî?
**Ebdûllah**: Na, ez înkara şefa'eta wî nakim û ez xwe jê bêrî jî nakim. Berevajîyê wê,

ez dê-bavên xwe bi gorî wî dikim. Ew şefa'etkar e, şefa'eta wî tê qebûlkirin jî. Ez her hêvîdarê şefa'eta wî me. Lêbelê şefa'et, hemû ji Xweda re ye. Çawa ku Xweda dibêje: "***Bibêje: Şefa'et, hemû ya Xwedê ye! Mulk û desthilatedariya erd û asîmanan jî ya wî ye. Piştre hûnê li wî bêne vegerandin***." **Zumer, 44.** Lêbelê şefa'et, piştî ku îzn û destûra Xweda pê hebe, çêdibe. Çawa ku Xweda dibêje: "***Kî dikare bêyî destûra wî, li cem wî şefa'etê bike?!***" **Beqere, 255.** Heta Xweda destûrê nede, ji ti kesî re şefa'et nayê kirin. Çawa ku Xweda dibêje: "***Li asîmanan çiqas pirr ferîşte hene ku şefa'eta wan ji bilî kesê ku Xwedê bive û jê razî be û destûrê bide feydeyê nade ti kesî din***." **Necim, 26.** Xweda ji tewhîdê pê ve bi tiştekî din razî nabe. Çawa ku Xweda dibêje: "***Kî, ji bilî Îslamê li dînekî din bigere, ew ê ji wî hîç neyê qebûlkirin û ew, li axretê jî ji ziyankeran e***." **Alî Îmran, 85.** Dema şefa'et hemû ji Xweda re be, eger ne bi destûra wî be, şefa'et nayê kirin, heta Xweda îzn nede, ne peyxamber, ne jî ti kesî din nikare di bara ti kesî de şefa'etê bike. Xweda jî bes ji bo ehlê tewhîdê îzna şefa'etê dide. Dema ji te re xuya bû ku şefa'et hemû ji Xweda re ye, ez jî wê ji Xweda teleb dikim û dibêjim: Xwedayê min! Min ji şefa'eta wî mehrûm neke. Xwedayê min! Di bara min de peyxamberê xwe bike şefa'etkar!

**Ebdûnnebî**: Me îttîfaq kiribû ku ne caiz e, mirov ji kesekî tiştekê bixwaze ku ew ne xwediyê wê be. Herçî peyxamber (Selat û selam li ser bin) e, Xweda şefa'et daye wî. Ji ber ku ew jê re hatiye dayin, nexwe ew bûye xwediyê wê. Bi vê îtîbarê, caiz e mirov tişta ku ew xwediyê wê ye, jê bixwaze û ew nabe şirk jî.

**Ebdûllah**: Erê, ev gotin rast e, heke Xweda ew li te qedexe nekiribe. Lewra Xweda dibêje: "***Digel Xwedê tu gazî û îbadetê îlahekî din neke û li ber negere***." ***Şûera, 213.*** Ji xwe teleba şefa'etê jî gazîkirin e. Xweda ye, ewê ku şefa'et daye peyxamberê xwe (Selat û selam li ser bin) dîsa her Xweda ye, ewê li te qedexe kiriye ku tu wê ji bilî wî ji yekî din bixwazî. Hîç ferq nake, ewê din jî kî dibe, bila bibe. Herçî şefa'et e, ew ji bilî peyxamber (Selat û selam li ser bin) ji hinek mirovên din re jî hatiye dayîn. Rast e, melaîket şefa'etê dikin. Ew zarokên ku hê baliğ nebûne û mirine jî şefa'etê dikin. Welî şefa'etê dikin. Vêca qey tu dibêjî; Xweda şefa'et daye wan, ezê wê ji wan teleb bikim? Heke tu vê bibêjî, tu vedigerî îbadetê salihan, ewên ku Xweda di kitêba xwe de behsa wan kiriye. Heke tu bibêjî na, ez şefa'etê ji wan teleb nakim, ev gotina te, ya ku tu dibêjî; "Xweda şefa'et daye wî û ez jî wê tişta ku Xweda daye wî, jê teleb dikim"pûç dibe.

**Ebdûnnebî**: Lêbelê ez şirîkan ji Xweda re çênakim. Xwe avêtina ber penaha salihan jî ne şirk e.

**Ebdûllah**: Gelo tu îtîraf û îqrar dikî ku Xweda bi heramkirineke ji heramkirina zinayê mezintir şirk heram kiriye û Xweda li gunehê şirkê jî hîç nabuhure?

**Ebdûnnebî**: Belê, ez wê îqrar dikim. Ew di kelamê Xweda de pirr eşkere ye.

**Ebdûllah**: Te, vêga ji nefsa xwe şirk red kir, ew şirka ku Xweda heram kiriye. Tu bi Xweda kî, tu dikarî wê şirkçêkirina ji Xweda re, ewa ku tu neketî wê û te ew ji xwe red kir, ji min re îzah bikî?

**Ebdûnnebî**: Şirk îbadetê ji seneman re ye. Bi îbadetê berê xwe dayîna wan, xwestina tiştan ji wan û tirsa ji wan e.

**Ebdûllah**: Me'neya îbadetê ji seneman re çi ye? Ma tu zen dikî ku kafirên Qureyşîyan bawer dikir ku ew hişkedar û kevir tiştan diaferînin, rizqê mexlûqatan

didin û karûbarên mirovên ku gazî wan dikin jî birêve dibin?! Çawa ku berê min ji te re gotibû, wan ev yek bawer nedikir.

**Ebdûnnebî**: Ez jî wê bawer nakim. Lêbelê ewê ku qesda hişkedarekî, yan kevirekî, yan avahîyeke li ser qebrekê, yan dîgerê wan jî bike, gazî wan bike, ji wan re qurbanê serjêke û bibêje: Ew me nêzîkî Xweda dikin û Xweda bi bereketa wan zirarê ji ser me radike! Ev e, îbadetê seneman, ewê ku ez qesd dikim.

**Ebdûllah**: Te rast got. Lêbelê ev kirina we bi xwe ye jî, ya li cem keviran, avahî û kumbetên li ser qebran û dîgerên wan e jî. Her wiha gotina te; şirk îbadetê ji seneman re ye! Gelo armanca te ev e ku bes ewê wê tenê bike, şirkê çêdike? Îtîmadkirina li ser salihan û gazîkirina wan nakeve bin navê şirkê?

**Ebdûnnebî**: Belê, qesda min tam ev bû.

**Ebdûllah**: Naxwe tu li hemberî wan gelek ayetên ku Xweda di wan de îtîmadkirina li ser peyxamber û salihan û xwe girêdana bi melaîketan û dîgerên wan ve heram kiriye û ewên ku wisan dikin jî tekfîr kirine, li kuderê disekinî? Wekî ku min ew beriya niha ji te re gotibû û jê re delîl jî anîbûn.

**Ebdûnnebî**: Lêbelê ewên ku gazî melaîket û peyxamberan kirine, ne ji ber vê sedemê hatine tekfîr kirin. Belkî ji ber ku gotine; melaîket keçên Xweda ne û Mesîh kurê Xweda ye, haşa! Hatine tekfîrkirin. Herçî em in, em nabêjin: Ebdûlqadir kurê Xweda ye, yan jî Zeyneb keça Xweda ye, haşa!

**Ebdûllah**: Herçî îddîakirina zaroyan ji Xweda re ye, ew kufreke serbixwe ye. Lewra Xweda dibêje: “***Bibêje: Xwedê her yek e. Her Xwedê ye bergeha hewcedaran. Kes jê çênebûye û ew jî ji kesî çênebûye. Tu hemkûf û hevta jî jê re tun in***.” **Îxlas, 1-4.**

Ehed = Yek ew e ku nezîrê wî nîn in. Semed, ew e ku di îhtiyacan de qesda wî tê kirin. Bêguman ewê ku vê înkar bike, kafir dibe; çendan dawiya ayetê înkar neke jî. Lewra Xweda dibêje: **“*Xwedê ji xwe re zaro negirtine û bi wî re ti îlah jî tun in. Heke wisa bûya, ew çax, her îlah dê bi yê ku aferandibûye re bibûya û hinan ji wan dê zora hinan bibira. Xwedê, ji wesfên ku jê re didin pak û dûr e*!** ” **Mu’mînûn, 91.**

Êdî ferqê bixe navbera herdu kufran. Delîla vê jî ev e; ewên ku ji ber gazî Lat kirine, kafir bûne, digel ku ew zilamek salih bûye jî. Wan jî hîç negotibû ew kurê Xweda ye. Ewên ku ji ber îbadet ji cinan re kirine, kafir bûne jî, wan jî negotiye, cin kurê Xweda ne. Her wiha her çar Mezheb jî di mijara “Hukmê Murted”î de dibêjin; misliman, dema bibêje, ji Xweda re zaro hene, murted dibe. Eger ew şirîkan ji Xweda re çêke jî murted dibe. Ew ferqê dixin navbera herdu cureyên kufrê.

**Ebdûnnebî**: Lêbelê Xweda dibêje: “***Bila haya we jê hebe ku bêguman weliyên Xwedê, ne tirs ji wan re heye û ne jî ew xemgîn dibin***.” **Yûnus, 62.**

**Ebdûllah**: Em jî îmanê pê tînin ku ew heq e û em wê dibêjin jî. Lêbelê îbadet ji wan re nayê kirin. Em vê qebûl nakin ku digel Xweda îbadet ji wan re jî were kirin û hinek mirov wan ji Xweda re bikin şirîk. Heke ev nebe; li ser te wacib e ku tu ji wan hez bikî, di heqiyê de li pey wan herî û kerametên wan îqrar bikî. Ji bilî ehlê Bid‘etê kesekî din kerametên welîyan înkar nake. Dînê Xweda di navbera herdu terefan de weset û navîngir e. Ew di navbera herdu delaletan de hîdayet e. Di navbera herdu batilan de heq e.

**Ebdûnnebî**: Ewên ku Qur’an di bara wan de nazil bûye, şehda xwe netanîn ku “ji

Xweda pê ve ti îlahê bi heqiyê nîn in", tekzîba peyxamberê Xweda (Selat û selam li ser bin) dikirin, înkara Be'sê (saxbûna piştî mirinê) dikirin, tekzîba Qur'anê dikirin û ew sêhrbazî dijimartin. Herçî em in, em şehda xwe tînin ku "ji Xweda pê ve ti îlahê bi heqiyê nîn in û Mûhemmed jî peyxamberê Xweda ye", em Qur'anê tesdîq dikin, em îmanê bi Be'sê (saxbûna piştî mirinê) tînin, em nimêj dikin û em rojîyê digrin. Vêca tu, çawa me jî dixî wekî wan?

**Ebdûllah**: Lêbelê îxtîlaf di navbera temamê aliman de nîn e ku dema însanek di mijarekê de tesdîqa peyxamberê Xweda (Selat û selam li ser bin) bike û di mijareke din de jî tekzîba wî bike, ew kafir e û nakeve dînê Îslamê. Her wiha ye, dema zilamek bi hinekê ji ayetên Qur'anê îmanê bîne û hinekê ji ayetên wê jî înkar bike, ew jî kafir e û nakeve dînê Îslamê. Her wekî wî zilamê ku tewhîdê îqrar bike û înkara nimêjê bike. Yan tewhîd û nimêjê îqrar bike û wacibbûna zekatê înkar bike. Yan van tevan îqrar bike û rojiyê înkar bike. Yan jî van hemûyan jî îqrar bike û wacibbûna hecê înkar bike. Ji ber vê yekê ye ku çi dema di serdema peyxamber (Selat û selam li ser bin) de hinek însan neçûne hecê. Xweda di bara wan de ev ayet nazil kir: "***Ji bo Xwedê çûna Heccê li ser mirovan wacib e ku ji aliyê rê ve karibe biçe (saxlem be û pere, xwarin, siwareka wî hebe û rê vekirîbe). Her kî jî wê mandel bike, vêca bi rastî Xwedê, ne hewcedarê cîhaniyan e.***" *Alî Îmran, 97.* Eger mirovek înkara Be'sê (saxbûna piştî mirinê) bike, ew bi îcma'ya ummetê kafir dibe. Ji ber vê yekê ye ku Xweda di kitêba xwe de bi serahetî dibêje: Ewê ku îmanê bi hinekê ji ayetên Qur'anê bîne û hinek ayetên wê jî înkar bike, ew tam kafir dibe. Xweda ferman kiriye ku Îslamîyet bi temamî were girtin; ne piço piço. Nexwe kî hinekê jê bigre û hinekê jê înkar bike, ew kafir dibe. Qey tu jî îqrar dikî ku kî îmanê bi hinekê ji îslamê bîne û hinekê jê terk bike, kafir dibe?

**Ebdûnnebî**: Belê, ez wê îqrar dikim. Ew di Qur'ana Kerîm de zehf eşkere ye.

**Ebdûllah**: Naxwe, dema tu îqrar bikî ku ewê di xusûsekê de tesdîqa peyxamber (Selat û selam li ser bin) bike û wacibbûna nimêjê înkar bike. Yan jî hemû sereta û ferzên îslamê îqrar bike; lêbelê Be'sê (saxbûna piştî mirinê) tenê înkar bike, ew bi îcma'aya temamê Mezheban kafir e. Her wekî derbas bû, Qur'anê ev bi serahetî gotiye. Naxwe tu bizane ku tewhîd, ji temamê ferzên ku peyxamber (Selat û selam li ser bin) bi wan hatiye şandin, mezintir e. Ew ji nimêj, zekat û hecê mezintir e. Naxwe çawa çêdibe ku dema însanek tiştekê ji wan înkar bike, kafir dibe; çendan bi temamê tiştên din yên ku peyxamber (Selat û selam li ser bin) bi wan hatiye şandin 'emel bike jî. Lêbelê dema tewhîdê înkar bike, ew tewhîda ku dînê temamê peyxamberan e, kafir nabe?! Subhanellah! Ev çi cehaleteke balkêş û xerîb e!

Dîsa sehabîyên peyxamberê Xweda (Selat û selam li ser bin) bihizire, di demekê de wan li Yemamê şerrê Benûhenîfe kiriye. Halev e ku ew qebîle digel peyxamber (Selat û selam li ser bin) misliman bûbûn û şehda xwe jî tanîn ku "ji Xweda pê ve ti îlahê bi heqiyê nîn in û Mûhemmed jî peyxamberê Xweda ye", nimêj dikirin û ezan jî didan.

**Ebdûnnebî**: Lêbelê wan şehda xwe tanî ku Museyleme jî peyxamber e. Herçî em in, em dibêjin: Piştî Mûhemmed (Selat û selam li ser bin) ti peyxamber nîn in.

**Ebdûllah**: Lêbelê hûn hinek salihan çi peyxamber bin, çi melaîket bin, çi sehabî bin, çi jî dîgerên wan bin, radikin mertebeya Xwedayê ku li erd û asîmanan qadirê

mutleq e. Bêguman dema şexsek zilamekî rake mertebeya peyxamber (Selat û selam li ser bin) kafir dibe, bi xenîmetî standina malê wî û di cengê de rêhtina xwîna wî helal dibe û şehde-anîn, nimêj û dîgerên wan jî ti feyde nadin wî. Vêca ewê ku şexsekî rake mertebeya Xweda (*cellecelalehû*) ew bi rêya pêştir kafir dibe. Her wiha ewên ku îmam ‘Elî (Xweda jê razî be) ew bi agir şewitandin, tevan ji bo xwe mislimanetî îddî‘a dikir. Ew tev hevalên ‘Elî (Xweda jê razî be) bûn û îlmê xwe ji sehabîyan hîn bûbûn. Lêbelê wan jî di bara ‘Elî de ew tişt bawer dikir, eynî ew tişta ku hûn di bara Ebdûlqadir û dîgerên wî de bawer dikin. Vêca de tu bihizire, çawa sehabîyan li ser kufra wan û wacibbûna şerrê wan îcma kiribû? Qey tu hîç guman dikî ku sehabî dê tekfîra mislimanan bikin? Qey tu guman dikî ku bawerkirina îtîqadeke şaş di bara seyyîd Ebdûlqadir û yên wekî wî de zirar nake, lêbelê bawerkirina îtîqadeke şaş di bara ‘Elî (Xweda jê razî be) de însên dixe kafir?  Dîsa tê gotin: Ewên pêşî ji ber ku hem şirk çêkiribûn, hem jî tekzîba peyxamberê Xweda (Selat û selam li ser bin) û Qur’anê û înkara Be‘sê (saxbûna piştî mirinê) û dîgerên wan jî kiribûn. Yanî ji ber ku wan şirk û tekzîb cem kiribûn, tekfîra wan hatiye kirin. Eger ev rast be, nexwe çi me‘ne ji vê mijarê re heye ku alimên her mezhebî “mijara hukmê murtedî” zikr kirine. Murted ew misliman e ku di piştî mislimanbûna xwe de kafir dibe. Paşê jî fiqhzan û aliman gelek tişt zikr kirine ku her cureyeke wan wî însanî ji îslamê derdixe. Heta wan hinek tiştên besît li cem yê ku bike, zikr kirine ku ew murted dibe. Her wekî peyveke ku Xweda jê hêrs dibe, bi zimanê xwe bibêje, ne ku bi qelbê xwe jî, yan jî bi awayê tinaz û leystik jî bibêje, murted dibe. Her ev in, ewên ku Xweda di bara wan de dibêje: “***(Resûlê min!) Eger tu ji wan bipirsî (we tinazên xwe bi Pêxember û hevalê wî dikir), teqez dê bibêjin: Bêguman her em ketibûn nav xeberdanê û me xwe pê mijûl dikir. Bibêje: Erê ma we tinazên xwe bi Xwedê, ayetên wî û Pêxemberê wî dikir? (Resûlê min! ji munafiqan re bibêje:) Mehneyan mekin! Bêguman piştî we bawerî anî dîsa hûn kafir bûn.***” *Tewbe, 65-66*

Ha ev in, ewên ku Xweda di bara wan de bi serahetî dibêje, ew di piştî îmananîna xwe de kafir bûne. Digel ku ew di ğezweya Tebûkê de bi peyxamberê Xweda (Selat û selam li ser bin) re bûn jî. Wan peyvek gotibû. Paşê gotin; me ew ne bi rastî lê bi awayê tinazê gotibû. Dîsa tê gotin: Tişta ku di bara îsraîlîyan de digel mislimanbûna wan, alimbûna wan û salihbûna wan jî tê vegotin ku wan ji Mûsa (*eleyhisselam*) re gotibû: “***Ya Mûsa! Ka çawa ji van re îlah hene, tu jî ji me re îlahekî çêke (da ku em îbadetê wî bikin)!***” *Eraf, 138.* û gotina hinek ji sehabîyên peyxamber (Selat û selam li ser bin) jî ya “ji me re darekê diyar bike da ku em şûrên xwe pê ve daleqînin û feyz û bereketê jê wergirin.” Peyxamber (Selat û selam li ser bin) sond xwar; ku ev jî wekî vê gotina Îsraîlîyan e: “***Ya Mûsa! Ka çawa ji van re îlah hene, tu jî ji me re îlahekî çêke (da ku em îbadetê wî bikin)!***” *Eraf, 138.*

**Ebdûnnebî**: Lêbelê Benû-îsraîlî û ewên ku ji peyxamber (Selat û selam li ser bin) xwestibûn ku ew ji wan re “*darekê diyar bike da ku şûrên xwe pê ve daleqînin û feyz û bereketê jê wergirin*” (Li Mekkê darek hebû, qebîleyên wê beriya biçûna herbê şûrên xwe pêve dikirin û bawer dikirin ku ew ê xêr û serkeftinê bidest wan ve bîne) bi wê kafir nebûne.

**Ebdûllah**: Bersiva vê pirsê jî ev e: Îsraîlî û ewên ku ew ji peyxamber (Selat û selam li ser bin) xwestibûn jî, heke ew bikirana, ewê kafir bibûna. Ewên ku peyxamber men'a wan

jê kir jî, heke bi xebera wî nekirana û di piştî menkirina wî de jî tiştekî xwedan daleqandin wergirtana, ewê jî kafir bibûna!

**Ebdûnnebî**: Lêbelê li cem min asêpirseke din jî maye. Ew jî qisseya Usame kurê Zeyd -Xweda ji wan razî be- e. Dema wî mirovekî ku gotibû: "Laîlaheillellah" jî kuştibû, peyxamber (Selat û selam li ser bin) ew ji wê bûyerê şermezar kiribû û jê re gotibû: "***Ya Usame! Ma piştî ku wî got; laîlaheîllellah jî te ew kuşt?!***" *Buxarî*. Her wiha ye, ev gotina peyxamber jî: "***Ferman li min hatiye kirin ku ez şerrê mirovan bikim; heta ew laîlaheîllellah bibêjin***." *Muslim*. Vêca ezê van herdu hedîsan û tişta ku tu dibêjî, çawa bînim cem hev? Ji kerema xwe rê nîşanî min bide. Xweda jî rê nîşanî te bide.

**Ebdûllah**: Melûm e ku peyxamber (Selat û selam li ser bin) şerrê cihûyan kiriye û ew esîr jî girtine. Digel ku wan digot; "**laîlaheîllellah**" jî. Sehabîyên peyxamber jî di demekê de li Yemamê şerrê Benûhenîfe kiriye. Halev e ku wan şehda xwe jî tanî ku "ji Xweda pê ve ti îlahê bi heqiyê nîn in û Mûhemmed jî peyxamberê Xweda ye" û nimêj jî dikirin. Her wiha ne, ewên ku 'Elî (Xweda jê razî be) ew şewitandibûn jî. Tu, bi xwe jî îqrar dikî ku ewê înkara be'sê (saxbûna piştî mirinê) bike, kafir dibe û qetla wî jî helal dibe. Çendan ew bi devê xwe "l**aîlaheîllella**h" jî bibêje. Ewê ku yekê ji ruknên Îslamê înkar bike jî kafir dibe û çendan "laîlaheîllellah" bibêje jî ewê were kuştin. Vêca çawa ew gotina laîlaheîllellah menfî'etê nade wî, eger ew tiştekê ji teferruatan înkar bike û ewê çawa menfî'etê bide wî, eger ew tewhîdê înkar bike; hem jî ew tewhîda ku kok û serê dînê hemû peyxamberan e?! Dibe ku te me'neya van hedîsan fehm nekiribe.

**Herçî hedîsa Usame** ye, wî zilamek kuştibû ku ji bo xwe mislimanbûn îddîa kiribû. Lewra Usame zen kiribû ku ew ji tirsa canê xwe û malê xwe wê dibêje. Halev e ku ew mirovê mislimanbûna xwe bide xuyakirin, wacib e ku mirov bi xirabî dest lê nexe, heta xîlafa wê gotina wî jê xuya bibe. Lewra Xweda dibêje: "***Gelî yên ku îman anîne! Dema hûn di rêya Xwedê de derkevin cîhadê, xweş teftêş bikin***." *Nîsa, 94*. Yanî tesbît bikin. Ayet nîşan dide ku divê mirov dest ji şerrê wî bikişîne û teftêş bike. Eger di piştî wê de tiştekî muxalifî îslamê ji wî xuya bibe, ewê were kuştin. Lewra Xweda dibêje: "***xweş teftêş bikin***." *Nîsa, 94*. Yanî eger dema wî ew got, nehatana kuştin, dê ji teftêşkirin û tesbîtkirinê re ti feydeyek nebûna.

Her wiha ye hedîsa din jî, me'neya wê jî ew bû ku me vegot. Naxwe ewê ku tewhîd û îslamê îzhar bike, gerek e mirov dest ji şerrê wî bikişîne. Lêbelê eger tiştekî ku dijîtî û nakokîyê bi wan re bike, jê xuya bibe, ew cuda ye. Delîla vê jî ev hedîs in: "***Ma piştî ku wî got; laîlaheîllellah jî te ew kuşt?!***" *Buxarî*. Her wiha dîsa peyxamber dibêje: "***Ferman li min hatiye kirin ku ez şerrê mirovan bikim; heta ew laîlaheîllellah bibêjin***." *Muslim*. Heman tişt di bara xewaricîyan de jî gotiye: "***Hûn li kuderê li wan rast werin, wan bikujin***." *Buxarî*. Digel ku wan ji her kesî zehftir tehlîl (**laîlaheîllellah**) digot û îbadet dikir jî. Heta dema sehabîyan îbadetê wan didît, xwe biçûk û nehêja didît. Halev e ku ew îlmê xwe ji sehabîyan hîn bûbûn. Lêbelê çi dema muxalefeta Şerî'etê ji wan xuya bû, laîlaheîllellah-gotina wan, zehf îbadetkirina wan û ji bo xwe îddîakirina wan ya mislimanbûnê jî ew ji qetl û kuştinê xilas nekirin.

**Îstîğase'ya mûbah**

**Ebdûnnebî:** Gelo gotina te di bara vê hedîsa ku ji peyxamber (Selat û selam li ser bin) hatî rîwayetkirin de çi ye? Lewra ew dibêje: Însan roja Qiyametê bi Adem îstîğasê (hewarê) dikin. Paşê bi Nûh, paşê bi Îbrahîm, paşê bi Mûsa, paşê bi Îsa. Vêca ew uzrê xwe dixwazin. Heta di dawiyê de digihîje Mûhemmed (Selat û selam li ser bin) nexwe ev nîşan dide ku ji bilî Xweda îstîğase xwestina bi yekî din nabe şirk.

**Ebdûllah:** Di bara heqîqeta vê mijarê de ev tevlîhev-kirin ji te çêbû. Lewra îstîğase xwestina ji mexlûqekî sax û hazir, hem jî di mijareke ku ew dikare wê bike de, em hîç wê înkar û red nakin. Lewra Xweda dibêje: "***Vêca zilamê ku ji benda wî bû li hemberî zilamê ku ji neyarê wî bû arîkarî ji Mûsa xwest.***" *Qeses, 15.* Çawa ku însanek di cengê û dîgerên wê de jî di bara tiştekî ku ew dikarin bikin de arîkariyê ji hevalên xwe dixwaze. Em înkara îstîğase xwestina îbadetê dikin, ewa ku hûn li cem merqedên welîyan dikin, yan jî hûn di nehaziriya wan de hinek tiştan ji wan dixwazin ku ji Xweda pê ve ti kes nikare wan bike. Însan roja Qiyametê arîkariyê ji peyxamberan dixwazin, ji wan teleb dikin ku ew gazî Xweda bikin da ku hesabê ji mirovan bipirse. Ji bo ehlê cennetê ji kerba mewqifê rehet bibin. Ev di dinya û axretê de caiz e. Tu dikarî herî cem zilamekî salih, ew jî bi te re rûne û li axaftina te guhdarî bike. Tu jî jê re bibêjî: Ji min re dû'a ji Xweda bike. Çawa ku sehabîyên peyxamber (Selat û selam li ser bin) di saxîya wî de jê dixwestin ku ji Xweda dû'a ji wan re bike. Lêbelê di piştî wefata wî de haşa, tiştekî wisan çênebûye! Wan li ber qebra wî ew jê nexwestine. Lêbelê selefên salih ji wî kesê ku li cem qebrekê qesd bike ku gazî Xweda bike, ew qebûl nekirine.

**Ebdûnnebî:** Gelo gotina te di bara qisseya Îbrahîm -eleyhisselam- de çi ye? Lewra dema ew di êgir de hate werkirin, Cibraîl (*eleyhisselam*) di hewayê de xwe jê re eşkere kiribû û jê re gotibû: Ma îhtiyaceke te heye? Îbrahîm (*eleyhisselam*) jî jê re gotibû: "***Ti îhtiyaceke min bi te nîn e!***" Naxwe eger îstîğase û arîkarî xwestina ji Cibraîl (*eleyhisselam*) şirk bûna, wî dê ew li Îbrahîm ***-eleyhisselam-*** eşkere û erz nekirana!

**Ebdûllah:** Ev şubhe jî ji cinsê şubheya din e. Ew rîwayet jî ne sehîh e. Eger em ferezî bibêjin, ew sehîh e jî. Cibraîl (*eleyhisselam*) li wî erz kiriye ku menfî'etekê bide wî, hem jî di tiştekî ku dikarîbû jê re bike de. Lewra Xweda di bara wî de dibêje: "*Lewra ferîşteyekî* ***hêzedijwar*** *ew hîn kiriye.*" *Necm,5.* Eger Xweda destûra wî bidaya ku ew raje agirê Îbrahîm û erd û çîyayên derdora wî û bavêje şerqê yan jî ğerbê, ewê li ber vê wezîfeyê bêçare nemana. Ev jî her wekî rewşa mirovekî dewlemend e ku ji zilamekî muhtac re malekî pêşniyar bike da ku ew îhtiyaca xwe pêkbîne. Vêca ew jî pêşniyara wî qebûl neke û sebr bike, heta Xweda rizqekî bide wî ku tê de ji ti kesî re minnet nebe. Êdî ev li ku ye, îstîğase xwestina îbadet û şirkê ya ku niha xelk dikin, li ku ye?

**Mûşrikên vî zemanî ji mûşrikên Qureyşîyan yemantir in!**

Birayê min! Bizane ku mirovên berê, ewên ku mezinê me Mûhemmed (Selat û selam li ser bin) bi peyxambertî ji wan re hatibû şandin, ji ber sê tiştan şirka wan ji ya ehlê vî zemanê me siviktir bû.

**Ya yekem**; ew mirovên berê di ferehîyê tenê de şirîk ji Xweda re çêdikirin. Di tengiyê de bi awayekî xalîsane dîn ji Xweda re qebûl dikirin û şirîk jê re

çênedikirin. Delîla vê jî ev ayet e: “***Vêca dema ku ew li keştiyê siwar dibin, bi dilekî safî ew hawara xwe digihînin Xwedê. Vêca dema Xwedê bi selametî wan derdixe bejê, ha tu dibînê ku wa ye ji Xwedê re şerîkan çêdikin.***” *Enkebût, 65.*

Di ayeteke din de jî dibêje: “***Dema pêlên behrê yên mîna çiyan li wan hatin hev, hemen ji dilekî xalis li ber Xwedê digerin. Gava ku Xwedê ew deranîne bejê û rizgar kirin, vêca hin ji wan kêm dişêkirênin (û hin ji wan jî nankor in). Ji bilî yê xeddarê nankor kes ayetên me mandel nake.***” *Luqman, 32.*

Naxwe ew mûşrikên ku peyxamber (Selat û selam li ser bin) şerrê wan dikir, wan di ferehiyê de gazî Xweda û gazî dîgerên wî jî dikirin. Lêbelê di tengiyê de gazî Xweda tenê dikirin û sadat û mezinên xwe jî ji bîr dikirin. Herçî mûşrikên zemanê me ne, ew hem di ferehiyê de, hem jî di tengiyê de gazî dîgerên Xweda dikin. Dema yek ji wan dikeve tengiyê, dibêje: Ya Resûlellah! Ya Huseyn! Her wiha gazî dîgerên wan jî dike. Lêbelê kî vê rastiyê fehm dike?

**Ya duyem**; ew mirovên berê, bi Xweda re gazî hinek mirovên nêzî wî dikirin. Yan peyxamber bûn, yan welî bûn, yan jî melaîket bûn. Bi kêmasî gazî kevirekî, yan jî darekê dikirin. Ji xwe wan kevir û daran îtaeta Xweda dikir û li hemberî fermana wî ranedibûn. Herçî ehlê zemanê me ne, ew bi Xweda re gazî hinek însanên zehf fasiq û neqenc dikin. Ji xwe diyar e, ewê ku baweriya xwe bi salihan bîne û ewê ku baweriya xwe bi kevir û daran bîne ku bêemriya Xweda hîç ji wan sadir nabe, ew ji yê ku baweriya xwe bi fasiq û neqencan bîne, hem jî ew mufsid û neqencên ku fisq û ficûra wan û neqencîya wan zahir û xuya ye, siviktir û ehwentir e!

**Ya sêyem**; temamê mûşrikên serdema peyxamber (Selat û selam li ser bin) şirka wan di bara tewhîda ulûhîyetê de bû, ne di bara tewhîda ribûbîyetê de bû. Lêbelê berevajîyê vê, şirka yên piştî wan hatine, bi zehfî ketiye mijara tewhîda ribûbîyetê. Çawa ketiye tewhîda ulûhîyetê jî. Wek nimûne; ew di kaînatê de, di saxkirin û mirandinê de **tebî‘et**ê dikin teserrufkar. Ez dixwazim vê xeberdana xwe bi vegotina meseleyeke mezin bi dawî bikim ku ew ji wan mijarên derbasbûyî tê fehmkirin. Ew jî ev e; îxtîlaf li ser vê mijarê nîn e ku tewhîd divê bi bawerkirina bi qelb, gotina bi zimanî û kirina sebeban ya bi ‘emelê dest û pêyan be. Dema xelel bikeve yekê ji van, ew zilam êdî nabe misliman. Naxwe eger ew tewhîdê nas bike û pê ‘emel neke; kafirekî înadkar e, rewşa wî her wekî Firewn û Îblîs e. Di vê mijarê de gelek însan şaş dikin û dibêjin: ev heq e. Lêbelê em nikarin wê bikin. Xelkê welatê me û zarokên qewmê me wê caiz nabînin. Lazim e ku em ji tirsa neqencîya wan bi wan re muwafeqetê bikin û bi wan re xweş derbas bikin. Ev jar û belengaz nizane ku pirranîya rêberên kufrê heqiyê nas dikin, lê ji ber uzr û bahaneyekê terka wê dikin. Çawa ku Xweda di bara wan de dibêje: “***Ew di şûna ayetên Xwedê de behayekî hindik dikirrin û rêya wî asteng dikin. Bi rastî ya ku ew dikin çiqas pîs e!***” *Tewbe, 9.*

Ewê ku di zahirê xwe de bi tewhîdê ‘emel bike; lêbelê wê fehm nake û bi qelbê xwe jî wê bawer nake, ew munafiq e. Ew ji kafirê xalis xirabtir e. Lewra Xweda di bara wan de dibêje: “***Bi rastî munafiq, di qata jêrtirîna cehennemê de ne, êdî tu dê hîç ji wan re arîkarekî jî nebînî.***” *Nîsa, 145.* Ev mesele, bi eşkerehî heqiyê ji te re beyan dike. Dema tu awayê wê yê li ser zimanê mirovan bifikrî, tu dê bibînî ka kî heqiyê nas dike û ji tirsa ku dinyaya wî pê kêm bibe, terka ‘emelkirina pê dike, her

wekî Qarûn, yan ji tirsa ku şan û şohreta wê pê kêm bibe, terka ‘emelkirina pê dike, her wekî Haman. Yan jî ji tirsa ku îqtîdara wî dê ji destê wî here, terka ‘emelkirina pê dike, her wekî Firewn. Tu dê bibînî ka kî bi zahirê xwe pê ‘emel dike û di batinê xwe de jî îmanê pê nayîne, her wekî munafiqan. Dema tu jê bipirsî, ew bi qelbê xwe çi bawer dike, ew wê nas nake û nizane.

**Lêbelê gerek e, tu du ayetan ji kitêba Xweda rind fehm bikî**

**Ya yekem**; ew beriya niha jî derbas bû: “***Li behaneyan negerin! Bi rastî hûn piştî îmana xwe dîsa kafir bûne.***” **Tewbe, 66.** Dema tu bizanî ku hinek ji wan mirovên bi peyxamberê Xweda (Selat û selam li ser bin) re çûbûne şerrê Rûman, ji ber peyveke ku bi awayê leystik, mîzah û tinazan gotibûn, kafir bûne. Dê ji te tam xuya bibe ku ewê ji tirsa kêmbûna malê xwe, yan ji tirsa kêmbûna şan û şohreta xwe, yan ji bo îdarekirin û xapandina kesekî kelîmeya kufrê bibêje, yan jî pê ‘emel bike, webalê wê ji yê wî kesê ku bi tinaz wê peyvê dibêje, mezintir e! Lewra tinazker di eğlebê caran de tişta ku bi zimanê xwe dibêje, bi qelbê xwe wê bawer nake. Lê sirf ji bo kenandina mirovan wê dibêje. Lêbelê ewê ku ji tirsa hinekan, yan ji ber ku tematiyê di malê hinekan de dike, peyva kufrê dibêje, yan jî pê ‘emel dike, ew di peymanên wî de tesdîqa Şeytan dike. Çawa ku Xweda dibêje: “***Şeytan bi xizaniyê we ditirsîne û bêemriyê li we ferman dike.***” **Beqere, 268.** Ew di gefên wî de ji Şeytan ditirse. Çawa ku Xweda di bara wî de dibêje: “***Ha ew, her Şeytan bû, bes wî dostên xwe ditirsandin.***” **Alî Îmran, 175.** Ew di bara peymanên Rehman de tesdîqa wî nake. Çawa ku Xweda dibêje: “***Xwedê jî, ji cem xwe soza lêborîn û camêriyê dide we.***” **Beqere, 268.** Ew di gefên wî de ji qadirê mutleq natirse. Çawa ku Xweda dibêje: “***Naxwe eger bera hûn bawermend bin, ji wan netirsin; her ji min tenê bitirsin!***” **Alî Îmran, 175.** Gelo di vê rewşê de heqê wî heye ku bibe ji dostên Rehman, yan jî bibe ji dostên Şeytan?

**Ya duyem**; Xweda dibêje: “***Kî, piştî ku îman anîye Xwedê mandel bike, ji bilî yê ku xurtî lê hatîye kirin û dilê wî jî tije îman be ew ne têde ye. Lêbelê kî, ji kufrê re singa xwe veke, vêca xezeba Xwedê li ser wan ne û ji wan re ‘ezabekî mezin heye!***” ***Nehl, 106.*** Xweda uzr ji yekî ji van kesan qebûl nekiriye. Bes uzr ji mirovê ku kotekî û xurtî lê hatibe kirin û qelbê wî jî tije îman be, qebûl kiriye. Ji bilî wî, ewên din kafir bûne. Çi ew ji tirsan kiribin, yan ji temakariya xwe kiribin, yan ji bo xapandin û îdarekirina kesekî kiribin, yan ji ber dilxwazîya welatê xwe, ehlê xwe, êla xwe û malê xwe kiribin, yan jî ew bi awayê mîzah û tinazan û dîgerên van sebeban jî kiribin. Lêbelê ewê ku kotekî lê hatibe kirin, ew kafir nabe. Lewra ayet nîşan dide ku însan ji bo xeberdan û kirinê kotekî lê tê kirin. Herçî baweriya dil e, ti kes nikare kotekiyê li wê bike. Çawa ku Xweda dibêje: “***Ev jî, ji ber ku wan jiyana dinyayê di ser axretê re girtiye, bêguman Xwedê wî qewmê kafiran nayêne ser hîdayetê.***” ***Nehl, 107.*** Ayet bi serahetî dide îfadekirin ku ew ‘ezab ne bi sebeb îtîqad, cehalet, heznekirina ji bo dîn, yan jî hezkirina ji bo kufrê ye. Lêbelê sebebê wê bidestxistina parekê ji pişk û parên dinyayê ye. Ji lewra ew li ser dîn tercîh kirine. Xweda bêhtir dizane!

Ma di piştî van hemû delîlan de -Xweda te hîdayet bike- ji te re dem nehatiye ku tu li ber destê Rebbê xwe tobe bikî, lê vegerî û terka rewşa xwe ya ku niha li serê yî bikî. Lewra wekî ku te jî bihîst, rewş pirr tehlûkedar e. Mesele zehf muhîm û hal jî zehf mezin e.

**Ebdûnnebî**: Ez lêborîna gunehên xwe ji Xweda dixwazin. Ez li ber destê wî tobe dikim û ez şehda xwe tînim ku "ji Xweda pê ve ti îlahê bi heqiyê nîn in û Mûhemmed jî peyxamberê Xweda ye." Ez wan hemû tiştên ku min ji bilî Xweda îbadetê wan dikir, redd û înkar dikim. Ez ji Xweda dixwazim ku ji ber şaşîyên min yê berê, min uzrdar qebûl bike; gunehên min bi temamî ef û meğfîret bike, bi lutf, rehm û meğfîreta xwe bi min re mu'amele bike û heta ez çav pê bikevin jî ew min her li ser tewhîd û 'eqîdeya sehîh sabit bihêle. Birayê min! Ez ji Xwedayê xwe dixwazim ku ji bo van şîret û nesîhetên ku te li min kirin û ji bo te navê min: ***Ebdûnnebî*** (peyxamberbende) jî redd û înkar kir, ew bi mukafateke zehf mezin te xelat bike. Lewra dîn nesîhet e. Ez vêga ji te re didim zanîn ku ezê navê xwe bi "Ebdûrrehman" biguherînim. Ez ji bo wan munkerên batinî yên ku li serê bûm û te ew redd û înkar kirin jî ji te re spas dikim. Ew jî baweriya min ya şaş bû. eger ez li ser wê baweriya biçûma hizûra Xweda, ezê hîç xilas nebûbama.

**Hinek şîret û wesîyetên muhîm**

Lêbelê ezê daxwazeke dawîn ji te bikim. Ez dixwazim tu ji min re behsa hinek munkîratan bike, ewên ku însan zehf bi şaşî dikevin wan.

**Ebdûllah**: ğem nake, guhê xwe baş bide min.

✷ Zînhar, bila bi peyketina ayet û hedîsên ku di bara şîroveya wan de îxtîlaf hatiye kirin, nebe şî'ara te! Lewra bi peyketina xusûsên ku îxtîlaf di wan de hatiye kirin ji bo geş û gurkirina fitne û arzûya te'wîlkirinê ye. Di heqîqetê de ji Xweda pê ve ti kes te'wîla wan nizane. Bila şî'ara te şî'ara alimên pispor û zana be. Ewên ku di bara ayetên **muteşabih** de dibêjin: "***Me îman bi tevê wê (muhkem û muteşabihê wê) anî. Hemû ji cem Xwedayê me ne.***" *Alî Îmran, 7.* Di xusûsên ku îxtîlaf di wan de heye jî bila şî'ara te ev hedîsa peyxamber be: "***Tişta ku te dixe şubhê terk bike û here tişta ku te naxe şubhê, wê bike.***" ***Ehmed û Tirmizî*** . Bila şî'ara te ev hedîsên peyxamber bin: "***Kî, xwe ji tiştên bi şubhe biparêze, ew dînê xwe û heysîyeta xwe ji dev-avêtinê bêrî dike. Kî bikeve şubheyan, ew dikeve heramîyê jî.***" ***Muttefeqûn eleyh.*** Bila şî'ara te ev hedîsa peyxamber be: "***Guneh ew e ku di singa te de digere û tu hez nakî ku însan jê agahdar bibin.***" ***Muslim*** . Bila şî'ara te ev hedîsa peyxamber jî be ku sê caran gotibû: **"*Ji qelbê xwe fetwê bixwaze, ji xwe fetwê bixwaze. Qencî ew e ku nefsa mirov pê rehet û aram dibe. Guneh ew e ku di nefsê de peyda dibe, di singê de diçe û tê. Çendan însan fetwê bidin te û hemû kes jî fetwê bidin te.*"** ***Ehmed*** .

✷ Zînhar li pey hewes û arzûyên xwe neçe! Lewra Xweda însan li hemberî wê şîyar kirine û gotiye: **"*Ka bêje, ma te dît; ew ê ku hewesa xwe ji xwe re kiriye îlah?!*"** *Casîye, 23.*

✷ Zînhar, ji bo hinek şexs, fikr û dîtin-nêrîna ku bav û kal li serê bûn, teessubê neke! Lewra ew dikeve navbera mirov û heqiyê. Herçî heqî ye, ew malê mu'mînî yê windabûyî ye, ew wî li kuderê bibîne, ji bo xwedî-derketina li wî ji her kesî li pêştir e. Çawa ku Xweda dibêje: "***Dema ji wan re tê gotin: Bidin pey wehya ku Xwedê li ser pêxemberê xwe nazil kiriye, dibêjin: "Na! Em ê bidin pey tiştê ku me bav û bapîrên xwe li serê dîtiye." Erê ma ku bav û bapîrên wan ji wehya Xwedê bêhay bin û ne li ser rêka rast jî bin (dê bidin pey şopa wan)?!***" ***Beqere, 170.***

✷ Zînhar, xwe neşibihîne kafiran! Lewra ew serê her belayê ye. Çawa ku peyxamber (Selat û selam li ser bin) dibêje: “***Kî xwe bişibihîne qewmekî, ew ji wan e.***” *Ebûdawud*.

✷ Zînhar, xwe nesipêre dîgerên Xweda! Lewra Xweda dibêje: “***Kî, xwe bispêre Ellah, ew besî wî ye.***” *Telaq, 3*.

✷ Zînhar, di me‘sîyeta (bêemriya) Xweda de îtaeta ti kesî neke! Lewra peyxamber (Selat û selam li ser bin) dibêje: “***Di bêemriya xaliq de ji ti mexlûqekî re îtaet nayê kirin.***” *Tirmizî.*

✷ Zînhar, di bara Xweda de zena xirab neke! Lewra Xweda di hedîsa qudsî de dibêje: “***Evdê min di bara min de çi zenê bike, ez wisan im.***” *Muttefeqûn ‘eleyh*.

✷ Zînhar, bazin û ta (yên bi baweriya ku ew qewetê didin însên) û yên wekî wan ji bo rakirina belayê beriya ew biqewime, yan jî ji bo rakirina belayê piştî ew biqewime, nexe destê xwe!

✷ Zînhar, ji bo rakirina çavan nivîştan nedaleqîne! Lewra ew şirk e. Çawa ku peyxamber (Selat û selam li ser bin) dibêje: “***Kî (ji bo def‘a belayê) tiştekê daleqîne, ew ji wê re tê sipartin!***” *Tirmizî*.

✷ Zînhar, xwe ji teberrukkirina bi kevir, dar, eser û avahîyan dûr bigre! Lewra ew şirk e.

✷ Zînhar, xwe ji bêoxirdîtinî, reşbînî û bêqudûşdîtinî û tiştên wisan dûr bigre! Lewra ew şirk e. Çawa ku peyxamber (Selat û selam li ser bin) sê caran gotiye: “***Bêoxirdîtinî şirk e. Bêqudûşdîtinî şirk e!***” *Ebûdawud*.

✷ Zînhar, tesdîqa sêhrbaz û stêrenasan neke! Ewên ku ji bo zanîna ğeybê îddîa dikin, di rûpelan de bircan îzhar dikin û bextewarî yan jî bextreşîya xwediyên wan eşkere dikin. Tesdîqkirina wan di wê îddî‘aya wan de şirk e. Lewra ji bilî Xweda ti kes ğeybê nizane.

✷ Zînhar, nebêje; stêr û demsal baranê dibarînin! Lêbelê bibêje; Xweda baranê dibarîne.

✷ Zînhar, ji Xweda pê ve bi tiştekî din sond nexwe! Ji bilî Xweda ew tiştê ku sond pê tê xwarin, çi dibe bila bibe, her ew şirk e. Lewra di hedîsa şerîf de hatiye rîwayet kirin ku peyxamber (Selat û selam li ser bin) gotiye: “***Kî, ji bilî Xweda bi tiştekî din sond bixwe, ew kafir dibe û ew şirkê çêdike.***” *Ehmed*. Wek nimûne; ewê ku bi peyxamber sond bixwe, yan bi emanetî sond bixwe, yan bi namûsê sond bixwe, yan bi bext û zimmetê sond bixwe, yan jî bi jîyanê sond bixwe.

✷ Zînhar, zimanê xwe dirêjî zemên, bayê, tav, serma û germê neke! Lewra ew dibe zimandirêjîya li hemberî Xwedayê ku ew xuliqandine.

✷ Zînhar, xwe ji peyva “**Egerê**” dûr bigre; dema belayek were serê te nebêje; “eger” min ev bikira, ewê nehatiba serê min! Lewra peyva “egerê” karê Şeytan vedike. Hem jî tê de îtîrazkirina li qedera Xweda heye. Lêbelê dema belayek were serê te, bibêje: Ew qedera Xweda bû, hate serê min, ew çi bixwaze, ew wê dike.

✷ Zînhar, merqed û qebran ji xwe re nexe mizgeft! Lewra mizgefta ku tê de qebr û tirbe hebe, tê de nimêj nabe. Ji Aîşe (Xweda jê razî be) hatiye rîwayetkirin ku peyxamberê Xweda (Selat û selam li ser bin) li ber sekerata mirinê got: “***Laneta Xweda li yehûdî û nesranîyan be! Qebrên peyxamberên xwe ji xwe re xistin mizgeft.***” (Bi vê gotina xwe) ummeta xwe ji tişta ku wan kiribû hişyar dikirin. ” ‘Aîşe (Xweda jê razî be) dibêje: “***Eger ew nebûna, wan dê qebra wî bikirana ku ew bêhtir were xuyakirin.***” *Buxarî*

Dîsa peyxamber (Selat û selam li ser bin) gotiye: "***Wan ummetên beriya we, qebrên peyxamber û salihên xwe ji xwe re dixistin mizgeft. Hûn qebran nexin mizgeft. Ez wê li we qedeğe dikim.***" *Ebû'ewane.*

✷ Zînhar, wan hedîsên lêanîn, ewên ku di mijara "teşwîqkirina tewessula bi zatê wî, yan jî bi salihên ummeta wî" de dixin stûyê peyxamberê Xwedê (Selat û selam li ser bin) tesdîq neke! Ew lêanîn in û bi derew li ser devê pêxember dibêjin. Ji wan gotinan: "Şan û şerefa min ji xwe re bikin wasîle û navgîn. Lewra şan û şerefa min li cem Xwedê mezin e" , "Dema karûbar we naçar bihêlin, arîkariyê ji ehlê qebran bixwazin" , "Xweda li ser qebra her welîyekî melaîketekî xwe dixe wekîl, ew jî îhtiyacên mirovan pêktîne" , "Heke yek ji we di bara kevirekî de zena xwe qenc bike, ew menfî'etê didiyê" û ji bilî van jî gelek hedîsên lêanîn û derew hene.

✷ Zînhar, xwe ji pîrozbahiyên ku bi "mûnasebetên dînî" têne binavkirin dûr bigrin, mîna  Mewlûda Nebî, Îsra û Mî'rac û dîgerên wan jî. Ev **muhdes** in (ji nû ketine nav dîn) di bara wan de ti delîleke ku ji peyxamberê Xweda (Selat û selam li ser bin) û ji sehabîyên wî hatibe rîwayetkirin, tun e. Digel ku wan ji me bêhtir ji peyxamberê Xweda (Selat û selam li ser bin) hez dikir û dilê wan ji yê me bêhtir di xêran de hebû jî. Nexwe eger ew xêr bûna, wan dê beriya me ew bikira!

## (Şehdedayîna ku ji Xwedê pê ve tu mabûdê bi rastî tun in)

**Ev kelîme, şamilî ser di riknan tê:**

**1- (لاَ إِلَهَ ) Laîlahe** ye; ev ulûhiyyeta heqîqî ji ser xeynî Xwedê radike.

**2- (إِلاَّ الله) Îllellah** e; ev jî ulûhiyyeta rasteqîne tenê ji Xwedê re misoger dike. Xweda Teala ferman dike: "***Wê demê Îbrahîm, ji bavê xwe û qewmê xwe re got: Ez ji wan pûtên ku hun ji wan re îbadet dikin bêrîme, ji bilî wî Xwedayê ku ez xuliqandime, vêca ew ê min rasterê bike.***" **(Zuxruf 26-27)** Naxwe; îbadetkirina ji Xwedê re ne kafiye; belkî lazim e ji bo wî bi tenê be. Tewhîd jî durist nabe heyanî ku yek û tekbûna Xwedê û dûrbûna ji şirkê û ehlê wê neêne cem hev.

Di eserê[1] de hatiye ragihandin ku mifteya deriyê cennetê "**Laîlaha îllallah**" e, vêca ma gelo çi kesê ku wê peyvê bibêje digihe wî heqî ku cennet jê re vebe?

Ji Weheb kurê munebbeh re hate gotin: Erê ma "**Laîlaha îllallah**" ne mifteha cennetê ye? Got: Belê; mifteha cennetê ye. Lê belê ji her mifteyê re diran hene. Vêca eger tu mifteyeke ku jê re diran hebin bînê; deriyê cennetê ji te re vedibin. Na; eger tu neyênî ji te re venabe.

Ji Pêxemberê me pir hedîs hatine ragihandin ku ev bi tevayika xwe diranên wê miftehê aşkere dikin. Mîna gotina wî; "***Ew kesê ku Laîlaha îllallah ji dilekî safî*** .." "***bi rastiyeke ku dil li ser raweste***" " ***ji dil û can, bibêje*** û yê mîna van. Çawa ku van fermodeyan û xeynê wan jî, çûna cennetê bi zanîna wateya wê ve girêdane û ku heyanî mirinê li ser vê rewşê bisekine û ya ku ew dixwazin jî bicih bîne.

Ji tevekê van delîlan, aliman hin şert û merc danîne, lazim e ku ev bikar werin; digel ku li berê rêgirtek jî tune bin heta ku peyva "**Laîlaha îllallah**" bibe mifteha cennetê û feydê bigihîne gotarê xwe. Ev şertên ku em ê bibêjin ku diranên mifteha cennetê ne ev in:

**❶ Îlm (zanîn) e:** Bi rastî ji her peyvekê re wateyek heye, vêca pêwist e ku tu wateya "***Laîlaha îllallah***" bizanibê, zanîneke ku nezanînê ji holê rake. Ev peyva "**Laîlaha îllallah**" ulûhiyyetê ji ser dîgerê Xwedê radike û jê re misoger dike. Mana wê; "Ji bilî Xwedê yê ku îbadet bi heqqî jê re were kirin tune". Xwedê ferman dike: "***.. ji bilî wî kesê ku bi heqqiyê şehdeyî bide û ew dizanin jî.***" **(Zuxruf 86)** Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje: "***Ew kesê bimire û dizane ku ji bilî Xwedê tu mabûdê bi rastî tun in, ew ê herê cennetê.***"***(Muslim)***

**❷ Yeqîn (baweriya ji dil) e:** Yeqîn, ew e ku tu bi wateya kelîma tewhîde bi rengekî binbir bawerbikê. Lewra ew, şek û gumanê, didilî û bêqerarê qebûl nake. Belkî lazim e ku li ser baweriyeke binbir û vebirî were seknandin. Birastî jî Xwedê Teala derheqî salixê bawermendan de wiha gotiya: "***Birastî mumin; ew ên ku bawerîyê bi Xwedê û resûlê wî anîne û paşê tê de neketine şik û gumanê û di rêka dînê Xwedê de bi mal û canê xwe cihadê dikin, ha ew in ên di baweriya xwe de***

---

1 Eser gotina ku ne hedîs be; mîna gotina sehabiyan.

***rast û durist***."(Hucurat 15) Naxwe tenê bilêvanîna peyvê ne kafiye. Lezim e ku dil li serê rûne. Eger ku dil li ser nerûne, vêc a ew munafiqîya xwerû ye. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiya: "***Ez şehdeyæyê didim ku ji Xwedê pê ve ti mabûdê heq tun in û ez şehdeyîyê didim ku µuhemmed qasidê wî ye, çi ebdekî ku bi herdu peyva here hizûra Xwedê û gumana wî di wan de tunebe; her ewê têkeve cennetê.***" *(Muslim)*

**❸ Qebûl (pejirandin) e:** Vêca dema te wateya kelîma tewhîdî zanî û te yeqîn kir; lazim e ku ji vê zanîna binbir re berhemekî wê heye. Ev berhem, pêwiste ku tişta ev kelîme dixwaze bi dil û ziman qebûl bike. Ew kesê doza tewhîdê red bike û qebûl neke ew kafir dibe. Wekhev e; çi ew redkirin bisedem kubarî û înadê be û çi bi sedem hesedê be ferq nake. Birastî derbarî wan kafirên ku ji pozbilindî qebûl nekirine dibêje: "***Bi rastî ew (kafir) dema ji wan re dihate gotin, bibêjin: "Laîlaha îllallah** (bi negotinê) **xwe mezin didêran***."(Saffat 35)

**❹ Inqiyad (pabendibûn) e:** Ji tewhîdê re teslîmbûneke tam heye. Ha ev mihesa rasteqîne û xuyangeha emelî ye ji bo îmanê. Ev jî, bi kirina tişta ku Xwedê wacib kiriya û bi terka ya ku nehî jê kiriye misoger dibe. Çawa ku Xwedê gotiya: "***Ew kesê xwe bispêrê Xwedê û qencîkar be; birastî wî bi qulpa saxlem girtiye û encama rewşan bi bal Xwedê ve ye.***"(Luqman 22) Ha ev teslîmbûna temamî ye.

**❺ Sidq (rastgoyî) e:** Di gotina xwe de rastiyeke ku dijê derewê bê. Vêca ew kesê bi tenê bi zimanê xwe bêje û dilê wî bawerî pê neyîne, ew munafiq e. Delîla vê; gotina Xwedê ya derbarî nebaşiya munafiqan de ye: "***Ew, ya ku di dilê wan de tuneye bi zimanê xwe dibêjin.***"(Fetih 11)

**❻ Mehebbet (Xoşiwîstî/Hezkirin) e:** Piştî van, lazim e merevê mumin ji kelima tewhîdê hezbike, ji emelê ya ev kelîme dixwaze hezbike û ji wan kesê ku pê emel dikin hezbike. Nîşana hezkirina bende ji Rebbê xwe, ev e: pêşxistina hezkirina Xwedê ye çiqas ku ew dijî dilxwaziya wî be jî, dostaniya kesê ku dostaniya Xwedê û resûlê wî dike û dijberiya kesê ku dijberiya wan dike, mutabe'eta resûlê wî ye, şopandina şopa wî û qebûlkirina riya wî ye.

**❼ Îxlas (Niyetpakî) e:** Dema ew dibêje bes ji bo Xwedê dibêje. Xwedê Teala ferman dike: "***Ew tenê hatibûn fermanberkirin ku ew îbadetê Xwedê bikin, di îbadetê xwe de dilpak bin, berê xwe ji her rêka xwar vegerînin bal riya Xwedê ve..***". Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: "***Ew kesê ji bo rizaya Xwedê bibêje "Laîlaha îllallah" bi rastî Xwedê wî li ser agir heram dikî.***" *(Buxarî)*

## (Şehdedayîna ku Muhemmed (*Selat û selam li ser bin*) qasidê Xwedê ye)

Merevê mirî di gora xwe de bi sê pirsan tê pirskirin û îmtîhankirin. Eger bersiva wan pirsa pide ew rizgar dibe; na, eger bersiv nede ew hilak dibe.
Ji wan pirsan yek ev e: Pêxemberê te kî ye? Bersiva vê pirsê, ji bilî wî kesê ku li dinyayê Xwedê li ser şert û mercên bersivdayînê ew muweffeq kiribe pê ve tu kes bersivê nade û ji bilî wî kesê ku Xwedê di gorê de wî piştrast bike û ilhamê bidê; vêca ew di axreta wî de; wê roja ku mal û zaro feydê nadin, wê feydê bidiyê. Şert û mercên wê ev in:

**❶ Ya ku Pêxember (*Selat û selam li ser bin*) fermankirî ku pêkbînê:** Bi rewşekî wisa ku Xwedê emrî me kiriya ku em bi gotina wî bikin. Xwedê Teala wiha dibêje: "***Ew kesê bi gotina Pêxember (Selat û selam li ser bin) bike wî bi gotina Xwedê kiriye***" **(Nîsa 80)**.
Dîsa ferman dike: "***Bibêje: Eger hun dixwazin ji Xwedê hezbikin vêca bibin peyrewên min; Xwedê dê ji we hezbike***" **(Ali Îmran 31)**. Çûna cennetê bê şert û merc girêdayê bi îtaeta Pêxember (*Selat û selam li ser bin*) a bê şert û merc ve ye. Pêxember (*Selat û selam li ser bin*) wiha gotiya: "***Tevekê umeta min dê herin cennetê ji bilî yê ku qebul neke. Gotin: Ey resûlê Xwedê, ew ki ye ku dibêje: ez kî ye ku qebul nake? Pêxemeber got: "Ew ê ku bi gotina min bike diçe cennetê û ew kesê ku bêemriya min bike wî qebul nekiriye.***" ***(Buxarî)*** Ew kesê ku muhibbê Pêxember (*Selat û selam li ser bin*) be, pêdivî ye ku bi gotina wî bike. Lewra îtaet fêkiyê hezkirinê ye û ew nîşana kiryarî ye ji bo hezkirinê.

**❷ Ya ku jê xeber dayî ku pê bawerî bînê:** Ew kesê bi hinekî ji ya ku ji Pêxember (*Selat û selam li ser bin*) bi rengekî durist hatibe, ji dilxweziya xwe yan ji kêfa dilê xwe bawerî nayîne; birastî jî wî bawerî bi Xwedê û Resûlê wî neanîye. Lewra; Pêxember (*Selat û selam li ser bin*) ji şaşî û derewkariyê bêriye. Xwedê wiha ferman dike: "***Ew ji kêf û hewesa xwe napeyive***" **(Necm 3)**.

**❸ Ji ya ku nehya me jê kiriye mirov xwe jê bide paş:** Pêşî lazim e xwe ji gunehên herî mezin ku ew şirk e dûrbigre. Paşê derbasî gunehên mezin bibe û yên ku bi kirina wan ezab li ser merev heq dibe û dawî jî ji gunehên biçûk û kiryarên kirêt xwe dûrbigre. Li gorî hezkirina merevê musilman ji Pêxemberê wî re îmana wî zêde dibe. Dema îmana wî zêde bû Xwedê kiryarên baş pê dide hezkirin, kufr û fisq û bêemriyê jî li ber çavê wî reşdike.

**❹ Ji bilî ya ku li ser zimanê Pêxemberê xwe duristkirî ji Xwedê re îbadetê neke:** Di îbadetan de bingeh; dûrbûna ji bidetan e. Naxwe; ji bilî ya ku Pêxember (*Selat û selam li ser bin*) anîye ne durist e ku ji bo Xwedê îbadet werekirin. Pêxember (*Selat û selam li ser bin*) gotiye: "***Kî ku karûbarekî bike ku ne li gorî fermana me bê ew lê tê vegerandin.***"**(Muslim)**

## FEYDEYEKE GIRING

Agahdar be, birastî hezkirina Pêxember (Selat û selam li ser bin) û hezkirina ya ku pê hatiye wacib e. Ew kesê tiştekî ji ya ku Pêxember (Selat û selam li ser bin) aniye jê hezneke ew kafir dibe, çiqas ku ew pê emel jî bike. Hezkirin tenê ne kafiye; belkî lazime ji her tiştî bi bal te ve hezkirîtir be; hetta ji nefsa te jî hezkirîtir be. Birastî ew kesê ji tiştekî hezbike wê tercîh dike û tercîha muwafeqeta wî dike. Vêca ew ê ku di hezkirina Pêxember (Selat û selam li ser bin) de sadiq e, ew ê ku nişanên wê bi îqtîdaya pê, bi şopandina suneta wî; a qewlî û kirarî, bi pêkanîna fermanên wî û vekişandina ji menhiyatên wî û di tengasî û ferehiyê de, di xweşî û nexweşiyê de edebgirtina bi adabên wî li serê xuya dibin. Vêca îtaetî û peyrewîtî fêkiyê hezkirinê ne; bêyî wan hezkirin nayê rastdêran.

**Li ser hezkirina Pêxember (Selat û selam li ser bin) pir nîşan hene, hin ji wan ev in:**

1- Behsa wî pir bêkirin û li serê selat pir bêne dayîn. Ew kesê ji yekî hezbike gelekî behsa wî dike.

2- Muştaqê bal xwegihandina wî bê, lewra her dostek dixwaze xwe bigihîne dostê xwe.

3- Dema navê wî bête gotin merev wî mezin bike û qedir bidiyê. Îshaq dibêje: Sehabiyên pêxember (Selat û selam li ser bin) çiqas ku behsa wî dihate kirin; cermê laşê wan ditevizî û digirîyan.

4- Ewê ku jê heznake merev jî jê hezneke û ewê ku dijberiya wî bike merev jî dijberiya wî bike û xwe ji wanên ku muxalefeta suneta wî dikin û ji wan bidetkar û munafiqên ku di dîn de bidetan dikin xwe dûrbigre.

5- Ji yê kû Pêxember (Silava û selama Xwedê li ser be) ji wan hezjêdike; ji ehlê mala wî, ji xanimên wî , ji sehabiyên wî; muhacir û ensaran hezbike, yê ku dijminahîya wan dike dijminahîya wî bike, yê ku rika xwe ji wan tîne yan seba wan dike rika xwe ji wan bîne.

6- Bibê peyrewê exlaqê wî yê kerîm, bi rengekî wisa ku ew ji hêla exlaq ve keremtirînê mirovan e. Heta bi rewşekî wisa ku diya muminan Aîşe (Xwedê lê razîbe) derheqî wî de wiha gotiya: "*Exlaqê Pêxember (Selat û selam li ser bin) Qur'an bi xwe bû*". Anku li ser xwe pêwist kiribû ku ji bilî ya Quran ferman pê bike ku tiştekî din neke.

## HIN JI SALÎXÊN PÊXEMBER

Pêxember (Selat û selam li ser bin), ji mirovan mêrtir bû û li cem rûdanên ku di dijwariya herbê de diqewimin hê bêhtir mêr bû. Ji tevekê mirovan xêrkartir û comertir bû û di meha Remezanê de bêhtir comerd bû. Ji herkesî bêhtir nesîhet li xelkê dikir, ji herkesî helîmtir bû, vêca ji bo xwe tu carî tol li kesî venekir. Derbarî pêkanîna fermanên Xwedê de ji herkesî dijwartir û di tewazuyê de ji herkesî sakintir û tenatir bû. Ji qîzika di sitargeha xwe de bişermtir bû. Ji ehlê mala xwe re ji herkesî bixêrtir bû û li ser xelkê ji herkesî dilovantir bû û ji bilî van jî...pir pir.

# TEHARET/PAQİJÎ

Nimêj rıknê duyem ê îslamê ye; ew bê paqijî nab e, paqijî jî bê av û ax nab e. Texlîtên avê: **1- Ava tahir (paqij) e:** Ew a ku ew bi xwe paqij e û xeynê xwe jî paqij dike; ew bêdesmêjiyê radike û necasetê dibe.
**2- Ava necis e:** ew a ku necasetek tevlî bûbe bi egera ku hindik be, yan av pir be; lê belê tahma wê, rengê wê û bihna wê bi tevlîbûna necasetekê guherîbe.
**Agahdariyeke girîng:** Ava pir bi tevlîbûna necasetê necis nabe heyanî ku yek ji salixên wê; rengê wê, tehma wê û bihna wê neguhere. Ava hindik bi gihiştina necasetê necis dibe çiqas ku salixên wê neguheribin jî. Av dema du quleteyn be tê gotin ava pir, quleyteyn jî teqrîben dused û deh (210) litre ye.
**Firax (amûr) ên ku em wan dixebitînin:** Çiqas firaxên ku hene helal in; girtn û bikaranîna wan durist e ji bilî firaxên ji zêr û zîv. Destmêjgirtina bi firaxên ji zêr û zîv durist e, lê belê guneh e. Firax û cilên kafiran ku ne necis bin bikaranîna wan durist e. Lê belê dema me zanî ku ew necis in wê hingê heram e; lazim e ku bêne şûştin û tahfîlkirin.
**Çermê heywana mirarbûyî:** Cermê heywana mirarbûyî bê qeyd û şert heram e.
**Heywana mirarbûyî yek ji van herduyan e:** 1- Heywana ku goştê wê bê qeyd û şert nayê xwarin. 2- Heywana ku goştê wê tê xwarin lê belê nehatiye serjêkirin. Vêca dema ew bêne debaxkirin; bikaranîna wan di tiştên hişk de durist e; di tiştên ron ên avî de ne durist e. Heçî ku cermê kuçik û beraz e; ew bi tu awayî durist nîn e (debax bibe, yan nebe).
**Îstinca** (paqijkirina pêş û paşiyê ji necasetê)**:** Paqijkirina tişta ku ji pêşiya însên û paşiya wî derdikeve; eger ev paqijkirin bi avê be jê re **îstinca** tê gotin û eger bi kevir, bi kaxit û xeynê wan be tê gotin: **Îsticmar**. Ji bo ku tenê îsticmar durist be; şert e ku paqijkirin bi tiştekî tahir (paqij) be, helal be, paqijker be û ne ji tiştê ku tê xwarin be û ev bi sê keviran an zêdeyî wan çêdibe. Paqijkirina ji çiqas tiştê ku ji pêş û paşiya mirov derkeve wacib e; çi bi avê û çi bi kevir û kaxitan be.
Li ser wî kesê ku diçe qedangehê ku zêdeyî ihtiyaca xwe li serê bimîne û ku ew di cihê ku av tê re diçe, di rêka ku xelk tê re dimeşe, di bin siha ku feyde jê tê dîtin, di binê dara ku fêkî li serê heye ku mîz û gû bike heram e. Di çolê de dema ihtiyacdîtinê ku berê xwe û pişta xwe bi de qiblê ew jî heram e.
Ji bo wî kesê ku diçe qedangehê, tiştekî ku zikrê Xwedê li ser bê ku li ser xwe bibe, xeberdana li qedangehê, di qelşikê erdê de ku bike, ku destê xwe yê rastê bide şermegeha xwe û di xaniyan de berê xwe bide qiblê, ev tev mekrûh in (ne rind in). Lê belê eger ku bi van hewceyî hebe durist in.
Ew kesê ku diçe qedangehê ku xwe sê caran bi avê bişo yan sê caran bi kevir an bi kaxitan xwe paqijke û ku pêşî xwe bi kevir an kaxitan paşî bi avê jî xwe paqij bike, sunet e.
**Miswak: S**îwakkirina bi çiqas darikê ku nerm be mîna darikê Erakê sunet e. Li cem kirina nimêjê, xwendina Qur'anê, di destnimêjê de beriya avê li devê xwe werde, dema ji xwe şiyarbe, li cem çûna mizgeftê yan malekê û dema bihna devê wî nexweşbe bêhtir sunet e.
Sunet e; ku pêşî ji aliyê rastê ve dest bi siwakkirin û paqijkirinê bike û destê xwe yê çepê di birina tiştên nebaş de bikarbîne.
**WUDÛ (DESTNIMÊJ) Riknên Destnimêjê şeş in: 1-** Şûştina rû ye û avtêwerdana li dev û poz jî ji rû tên hesêbê. **2-** Şûştina herdu destan; ji serê tilîyan heyanî enîşkan. **3-** Mesha tevekê serî tevlî guhan. **4-** Şûştina herdu lingan digel gwîzekan. **5-** Tertîb e

(bi gorî rêzê here). **6-** Muwalat e (bênavbir van tevan li pey hev bike).
**Wacibên wê:** Beriya dest pê bike "***Bismillah***" bibêje û di serî de ji bo yê ku ji xewa şevê şiyarbûbe ku herdu kefên destê xwe beriya destê xwe bixe firaxa avê sê caran bişo.
**Sunetên wê:** Siwakkirin e, di serê ewil de herdu destê xwe bişo, beriya ruyê xwe bişo pêşî avê li devê xwe werde paşê li pozê xwe, ji yê ku nebirojî be ku avê baş li dev û pozê xwe werde (xelxele bike), rîha bitov tevbide, nava tilîyên dest û piyan tevbide, pêşî dest bi azayên rastê bike, azayan du car sê car bişo, istinşaq (avkişandina poz) bi destê rastê ve destpê dike û istinsar (fişkirin) bi yê çepê dest pê bike, azayên xwe bifirkêne, destmêja xwe tekûz bigre û duayên ku ji Pêxember (Silava û selama Xwedê li ser be) waridbûne bixwîne.
**Mekrûhatên wê:** Destmêjgirtina bi ava cemidî û germ, di yek uzwî de ku zêdeyî sê caran bişo, ji azayên xwe avê biwaşîne û şûştina hûndirê çav e. Heçî ku zuwahkirina azayên destmêjê ye ew mubah e.
**Agahdarî:** Dema avê li devê xwe werde lazim e ku di hûndirê dev de avê biçelqîne, dema avê bibe pozê xwe jî lazim e bi nefesa xwe bikişîne; ne bi dest tenê û dema fişkir jî lazime bi nefesê fiş bike. Eger avtêwerdana dev û poz ne bivî rengî bin sunet durist nabe.
**Şeklê desmêjgirtinê:** Ewil ku bi qelbê xwe niyeta desmêjgirtinê bîne, paşê "***Bismillah***" bibêje û herdu kefa destê xwe bişo, paşê avê li devê xwe werde û bikişîne pozê xwe, duv re ruyê xwe bişo (tixûbê ru: ji dirêjahî ve; ji cihê şînbûna muyên serî hayanî çenê û ji aliyê ferehî ve; ji guh heyanî guh e) piştre herdu destên xwe digel zend û enîşkan bişo, paşê derveyê tevekê serê xwe (ji tixûbê eniyê heyanî pişta stu) vemalê (sipîtayîya di ser guhan re ji serî ye) û yê herdû tiliyê xwe yê şehadetê têxe nava guhê xwe û bi herdu tiliyên beranî derveyê guhê xwe mesih bike û paşê herdu lingên xwe digel gwîzekan bişo.
**Agahdarî:** Rîh (lehye) dema ku sivik û firkbe lazim e ku cermê bin bê şûştin û dema ku gur û himbizbe ewê ser ve bişo.
**Mesha li ser xufan:** Xuf, cileke ku ji bo lingan ji cerm û ne ji cerm tê çêkirin. Eger ew ji hirî û yê mîna wê hatibe çêkirin jê re gore tê gotin. Mesha li ser xufa tenê di bêdesmêjiya biçûk te tê bikaranîn. Mesha li ser xufa bi çend şertan caiz e: **1-** Lazim e xuf li ser desmêjeke tekûz bête lixwekirin (yanî; piştî ku lingê xwe duyê şûşt têxe piyê xwe). **2-** Lazim e ku destmêja wî bi avê be. **3-** pêwist e ku cihê şûştina ferz bigre. **4-** Gerek helal bin. **5-** Ew bi xwe tehir bin.
**Şaşik:** Mesha li ser şaşikê bi çend şertan caiz e: **1-** Lazim e ku zilam be. **2-** Li gorî adetê serê wî bigre. **3-** Lazim e ku ji bo desmêja biçûk be. **4-** Desmêj lazim e bi avê be.
**Xumar (carik):** Mesha li ser carikê bi çend şertan caiz e: **1-** Lazim e ku ji bo jinê be. **2-** pêwiste ku di bin qirika de fetilandibe. **3-** Lazim e ku ji bo desmêjê be. **4-** Desmêj jî lazim e bi avê be. **5-** Li gorî adetê serê wê bigre.
**Mudetê meshê:** Ji bo yê ku li mal be şev û rojek e. Ji bo yê musafir (mesafa kurtkirina nimêjê ku 85 km. re); sê ro digel şevên wan e.
**Destpêka meshê:** Ji bo yê muqîm (yê li mal) ji bêdestmêjiya ewil a ku piştî xuf xistin lingên xwe dest pê dike heyanî eynî demê ji roja din dewam dike (24 saet).
**Miqdarê ku xufê tê mesihkirin:** Ji ser ve, ji serê tiliyan heyanî gwîzekan pirê wê tê mesihkirin. Mesih, bi tiliyên destan, bi awayekî jihevekirî tê mesihkirin.
**Agahdarî:** Ew kesê di seferê de mesha xufê bikê û paşê were mal, yan jî li mal mesih bike û paşê here seferê, yan jî di despêka seferê de bikeve şubhê; ew ê mesha yê li mal bike (24 saet).

**Cebîre (cebare li ser hestiyê şikestî):** Ew herdu tepik û yên mîna wan in ku hestiyên şikestî bi wan tên cebirandin, vêca mesha li ser wan bi çend şertan durist e: **1-** Lazim e ku hewcedarî bi bal wan ve hebe. **2-** Pêwist e ku ji cihê ku pê hewce ye derbas nebe. **3-** Lazim e ku di desmêjê de muwalat (li peyhevî) di navbera cihê ku cebar li serê ye û cihê din de hebe. Eger ku cebar ji cihê hewcedar derbas bibe lazime ku ya zêde bête rakirin. Eger ji zirara rakirina wê bitirse mesha li serê durist e.

**Çend feydeyên girîng in: a-** Ya herî baş ew e ku mesha xufan bi hev re bête kirin; bêyî ku yê rast bide pêşiya yê çepê. **b-** Mesha li ser binê xufê û kêlekên wê nemeşrû'e. **c-** Ji bedêla meshê şûştina xufan û dubarekirina meshê mekrûh e. **d-** Şaşik û carik, wacib e ku piraniya wan bête mesihkirin.

**Tiştên ku destmêjê dişikînin: 1)** Ew tiştê ku ji pêş û paşiya însên derkeve, çi tahir be; mîna menî û tirr û fisan; çi jî necis be, mîna mîz û meziyê. **2)** Bêhişbûna bi sedem xew û jixweveçûnê ye, ji bilî razana hindik ku rûniştî yan ji piyan be; wê hingê desmêj naşikê. **3)** Derketina gû û mîzê ne ji cihên wan ên mutad. **4)** Derketina tiştekî necis (ji bilî gû û mîzê) ji bedena mirovî dema ku zêdeyî adetê bê, mîna xwîna pir ku ji bedena insên derkeve. **5)** Xwarina goştê devehê. **6)** Destdane ewret (şermegeha insên) bê perde. **7)**Jin bihungive zilam yan zilam bihungive jinê, bê perde û bi şehwet. **8)** Derketina ji dîn e. Ew kesê yeqîn bike ku bidesmêj e û kete şikê ku bêdesmêj e, yan yeqîn bike ku bêdesmêj e û kete şikê ku bidesmêj e, ew ê li ser yeqînê niyeta xwe ava bike.

**Ğusil (şûştina ji cenabetê)** Ew tiştên ku ğuslê wacib dikin: **1-** Ji mirovê şiyar ku menî bilezet û ji yê razayî jî bilezet û bêlezet derkeve. **2-** Êxistina aletê mêr di fercê pîrekê de, çiqas ku menî neyê jî. **3-** Yê kafir ku musilman bibe çiqas ew murted be jî. **4-** Ji jinan hatina xwîna heyza. **5-** Hatina xwîna nîfasê. **6-** Mirovê musilman ku bimrê.

**Ferzên ğuslê:** Bi niyeta cenabetrakirinê şûştina tevekê bedenê digel dev û poz bi avê kafî dibe.

**Rakirina cenabetî bi awayekî tekûz bi neh tiştan pêktê: 1-** Niyetê bîne. **2-** Bismillahî bibêje. **3-** Beriya destê xwe têxe firaxê destê xwe bişo. **4-** Ewretê xwe û necaseta li ser xwe bişo. **5-** Desmêj bigre. **6-** Avê sê caran bi serê xwe dake. **7-** Avê bi ser bedena xwe de berde. **8-** Bedena xwe bi destê xwe mizbide. **9-** Ji aliyê rastê ve dest pê bike.

**Li ser yê ku bêdesmêjbê;** Destdana Qur'anê, nimêj û tewafa Beytê heram e.

**Li ser yê ku bi cenabet be;** Digel vanên hatin gotin, xwendina Qur'anê û sekna di mizgeftê de heram e.

Ew ê ku bi cenabet be jê re mekrûh e ku bêdesmêj rakeve û ku di şûştinê de avê zêdeyî ihtiyacê xerc bike.

**TEYEMUM Şertên wê: 1-** Nikaribe avê bikarbîne. **2-** Lazim e ku teyemum bi axeke tahir, helal, bitoz û ne xweliya agir be.

**Rıknên wê:** Niyet e, mesha tevekê rû ye, paşê mesha herdu destan heyanî qeftikê, tertîb û lipeyhevî ye.

**Betalkerên wê: 1-** Yên ku desmêjê betal dikin teyemumê jî betel dikin. **2-** Dîtina avê ye eger ku ji ber tunebûna avê teyemum girtibe. **3-** Şertên ku teyemum caiz dêran ku ji holê rabin. Mîna ku bi sedema nexweşiyê teyemum girtibe vêca rehet bibe.

**Sunetên wê: 1-** Ji bona wî kesê ku ji ber cenabetê teyemum digrê, tertîb û muwalat sunet e. **2-** Heyanî dawîya wextê nimêjê wê texîr bike. **3-** Piştî teyemumê xwendina zikrê ku piştî desmêjê tên gotin.

**Mekrûhatên wê:** Dubarekirina destlêdana li axê ye.
**Şeklê teyemumgirtinê:** Pêşî niyeta teyemumê tîne, paşê **besmelê** tîne û yek carê kefa destê xwe li axê dixe, paşê bi kefa destê xwe ruyê xwe mesih dike; bi herdu kefa destê xwe ru û riha xwe vedimale. Piştî wê bi kefa destê çepê ruyê destê rastê û bi kefa destê rastê ruyê destê çepê mesih dike.
**Rakirina necasetê:** Necaset di cure ne: 1- Necaseta eynî ye, ew a ku paqijîya wê ne mimkun e, mîna berêz; lewra ew, çiqas tu bişo ew tahir nabe. 2- Necaseta hukmî ye, ew necaseta ku li ser cihekî peyde buye ku di eslê xwe de tahir e. Mîna cil û erdê. Ew jî wiha ye:

| Tişt | Hukmê paqijkirina necaseta hukmî | |
|---|---|---|
| Heywan /Ajal | Necis | Kûçik, wehş (beraz), teyr (balinde)yên ku goştê wan heram e û ajalên ku goştê wan nayê xwarin û bi xilqeta xwe ji pisîkê mezintir bin. Hukmê van: Eynê wan, tevekê perçeyên wan û zêdehiyên wan heram in; mîna mîz, rîx, girêz, xwêdan, menî, şîr, lîk û vereşandina wan. |
| | Tahir | 1- Însan (mirov), hukmê wî; ji bilî mîz, gû, mezî, wedî û xwînê tevekê zêdehiyên wî helal in, mîna menî, xwêdan, tif, şîr, lîk û şilahîya ziha (fercê) pîrekan. |
| | | 2- Ajalên ku goştê wan helal e, hukmê wan: tevekê zêdehiyên wan tahir in. Weke mîz, rîx, menî, şîr, xwêdan, tif, verşandin û meziya wan. |
| | | 3- Ajalên ku xwegirtina ji wan zehmet e; weke ker û pisîkê û ew ajalên ku ji pisîkê biçûktir in, mîna mişk û yên weke wî. Hukmê van; girêz û xwêdana wan tenê tahir e. |
| Heywan a mirar | Heywana mirarbûyî tevekê wê necis e. Însan, kulî, masî û ew heywana ku xwîna herek jê re tunebe, mîna dupişk, kêzik û kêcê ,vêca ev tahir in. | |
| Tiştên hişk | Ax, kevir û yê mîna wan. Hukmê van: Ev tahir in. Lê belê ew tiştên buhûrî yên necis ew mustesna ne. | |

**Hin feydeyên girîng:** ✷ Xwîn, edab û şij necis in. Di nimêj û ğeyrê wê de dema ji heywaneke tahir be ji hindikê wê efu heye. ✷ **Xwîn di du curan de tahir e: 1-** Xwîna di masî de. 2- Xwîna ku di nav goşt û demarên heywana ku hatiye serjêkirin de maye. ✷ Xwîna ku ji heywaneke tahir hatiye û ku ew sax e, Xwîna meyî (eleqe) û kesekê xwînaê ev tev necis in. ✷ Rakirina necasetê ne hewceyî bal niyetê ve ye. Mesele; eger ku bi baranê necaset rabe ew tahir dibe. ✷ Destdana necasetê û birêveçûna li serê desmêjê naşikîne, bes lazime necaseta ku gihaye beden û cilan bê rakirin. ✷ Cih, cil û tiştên ku necisbûyîn bi çend şertan tahfîl (carî) dibin: 1- Lazim e ku bi ava tahir were tahfîlkirin. 2- Pêwist e ku li derveyî avê were guvaştin, eger ji yên ku têne guvaştin bê. 3- Dema di rakirina necasetê de şûştin tenê ne kafî be lazim e were firikandin. 4- Eger necaset ji ber kûçikî be lazime heft caran bi avê û ya heştan jî bi axê yan bi sabûnê were şuştin.
**Çend agahdarî ne:** ✷Necaseta li ser erdê, eger ron bê, mîna mîzê; wê hingê divê bi avê winda bike, heyanî ku necaset û reng û bîna wê bête rakirin. Eger ku cisim be, mîna gû; pêwist e ku eynê wê û şûna wê bête rakirin. ✷ Dema rakirina necasetê ji bilî avê ne mimkun be, lazim e ku bi avê were şuştin. ✷ Eger cihê necasetê ne kifşe be, cih dê bê şuştin heyanî ku yeqînkir ku şuştiye. ✷ Ew kesê ji bo nimêjeke nafile desmêj biger, durist e ku nimêja ferz jî pê bike. ✷ Ew kesê ku raze yan ba ji ber here ne lazim e ku xwe îstînca bike (ne lazime pêş û paşiya xwe bişo). Lewra ba tahir e. Tenê; dema xwest nimêj bike lazim e desmêj bigre.

# HUKMÊN DERBARÎ JINÊ DE

## Hukmê xwînên jinan ên tebî'î Yek: Xwîna heyz û îstîhaze

| Mijar/ Mesele | Hukmê wê |
|---|---|
| **Hindik û pirê salên ku jin tê de dikeve heyzan.** | Hindikê salên ku jin tê de dikeve heyzan neh (9) sal in. Eger beriya neh salan xwîn ji ziha wê hat, vêca ew xwîna îstîhazê ye û ji pirê wê re jî tu tixûb tune. |
| **Hindikê mudetê xwîna heyzan** | Hindikê wê şev û rojek e. Eger kêmî wê be ew îstîhaze ye.[1] |
| **Pirê mudetê xwîna heyzan** | Pirê wê panzdeh (15) roj in. Eger zêdeyî van royan xwîn bê ew îstîhaze ye. |
| **Paqijîya navbera du heyzan** | Paqijîya nevbera du heyzan sêzdeh (13) roj in. Eger beriya temambûna van rojan xwîn eşkere bibe ew îstîhaze ye. |
| **Li cem jinan xalibê heyzê;** | Şeş yan heft roj in. |
| **Li cem jina xalibê paqijiyê;** | Bistûsê (23) yan bistûçar (24) roj in |
| **Ma gelo; xwîna di esnayê ducanbûnê de heyz e yan na?** | Ew xwîn û sorayî[2] û zerayî[3] ya ku ji jina bihemle dertê ew îstîhaze ye. |
| **Jina bi heyza kengî dizane ku ji heyza derketiye?** | **Jin di cure ne: 1-** Bi derketina cila sipî[4] ye eger ku wê bibîne. **2-** Bi zuhabûna ziha jinê ji xwîn û sorahî û zerahîyê ye, eger ku ew cila sipî nebîne. |
| **Di esnayê paqijiyê de tişta ji ziha pîrekê derdikeve.** | Eger ew zelal be yan sipîkî zelqoyî be, ew tahir e. Eger ew xwîn be yan sorayî û zerayî be, ew necis e. Tevekê van desmêjê dişikînin. Eger ku ew dewam bike, ew îstîhaze ye. |
| **Sorahî û zerahîya ku ji ziha jinê xuya dibe** | Eger ew bi xwîna heyzan ve be; çi berî çi piştre, ew heyz e. Eger jê qetiyayî be, ew îstîhaze ye. |
| **Ew a ku ji mehê royên wê yê heyzdîtinê hebe û beriya wê paqij bibe** | Dema xwîn bidawî bû û paqijî dît bi tuhrê (paqijiyê) hukim li serê tê kirin, çiqas ku royên heyzê wê temam nebin jî, ew royên ku adetbû jê re ku di wan de xwînê bibîne. |
| **Pêşketina heyzê li ser dema xwe ya mutad û paşketina jê** | Çiqas xwîna ku salixên xwîna heyza tê de hebe; di kîjan demê de dibe bibe ew heyz e, bi şertê ku paqijiya di navbera du heyzan de ji sêzdeh royan (ku ev hindikê tuhra nevbera di heyzan de ye) zêdetir be. Na, eger ne zêdetirbê ew îstîhaze ye. |
| **Dema heyz ji dema xwe ya mutad kêmtir an zêdetirbe** | Bi şertê ku ji mudetê heyzê yê pir (ku ew panzdeh roj in) ne zêdetir be ew heyz e. |
| **Deme ku mudetekî dirêj; mîna ku mehek an zêdeyî mehekê xwîn ji jinê were?** | **Jê vê re çend rewş hene: 1-** Ew jina ku di mehê de dema ketina heyza xwe zanibe û jimara royên xwe zanibe; vêca ew bi miqdarê heyza xwe; bi jimar û dem ve wê bi heyzî rûne, wekhev e; çi xwhina wê kifşe bê, an ne. **2-** Ew jina ku dema heyza xwe zanibe, lê belê jimara royên xwe nizane; ew wê şeş an heft royan (ku ev exlebê royên heyzê ne) bi heyzî rûne. **3-** Ew jina ku jimara royên heyza xwe dizane, lê belê ji mehê weqtê hatina wê nizane; ev jin, ji serê her meha heyvî li gorî jimara ku dizane bi heyzê wê rûnê. |

---

1 **Heyz:** Xwîneke tebî'î ye, cibilî ye, ne bisedem weldandinê tê û digel ku rehete jî. **Îstîhaze:** Bi sedem nexweşî û xerabûnê xwînhatina ne di waxtê xwe de ye. **Ferqa di navbera heyz û îstîhazê de:**
**1-** Xwîna heyzan, sorekî ber bi reşayî ve ye. Xwîna îstîhazê sorekî zelal e, weke xwîna ku ji poz tê.
**2-** Xwîna heyza bişewat e, carina qut dibe; xwîna îstîhazê tenik e herwekî xwîna birîneke normal e.
**3-** Xwîna heyza bîna wê kirêt e, pir caran genî ye; heçî ku îstîhaze ye, bîna wî mîna xwîna normal e.
**Di heyzan de çend tişt heram in:** Munasebeta cinsî, telaq (berdana wê), Nimêj, Rojî, Tewaf, xwendina Qur'anê, destdana wê û sekna di mizgeftê de.

2 Xwîneke herek e, ji ferc derdikeve, rengê wê esmerekî tarî ye.

3 Xwîneke herek e ji ferc derdikeve, rengê wê bi zerayî ve ye.

4 **Cla sipê:** Ew herek e, sipî ye, di paqijiyê de ji fercê (şermegeha) pîrekê dertê. Cila sipî paqij e, lêbelê desmêjê dişkîne

# DİDO: XWÎNA NÎFASÊ YE

| Mijar/ Mesele | Hukim |
|---|---|
| **Dema jin bi welide û xwînê nebîne?** | Jineke bi vê rewşê, hukmê nîfasê li serê nayê tetbîqkirin, xusil (şuştin) li ser ne wacib e û eger bi rojîbe rojiya wê betal nabe. |
| **Dema nîşanên weldandinê bibîne.** | Ew tişta ku demekê beriya weldandinê ji xwîn û avê, digel ku qolincan dibîne, ev jî hukmê nîfasê nagire ser xwe; belkî ew îstîhaze ye. |
| **Ew xwîna ku di esnayê weldandinê de dertê** | Ha ev, xwîna nîfasê ye, çiqas ku zarok nehatibe yan jî hinek jê hatibe. Di vê demê de qezakirina nimêja ku li ser jinê dibûre ne wacib e. |
| **Royên nîfasê kengî tên destpêkirin** | Piştî ku zaro bi awayekî tekûz ji diya xwe bû, wê hingê destpê dike. |
| **Hindikê xwîna nîfasê** | Ji hindikdê xwîna nîfasê tu sînorek tuneye. Eger welidî û paşê xwîna wê pêre-pêre qutbû; lazim e xwe bişo û nimêja xwe bike; ne lazime ku çil royê xwe temam bike. |
| **Pirê xwîna nîfasê** | Pirê wê çil roj e. Eger xwîna wê ji çil royî derbasbû, îtîbar pê nake; xusil û nimêj wacib dibin. Lê belê; eger ew xwîn tesadufî dema xwîna heyza ya berî ducanbûnê were; vê carê ew heyz tê hesibandin. |
| **Ew jina ku cêwî yan zêde bi welidîne** | Royên nîfasê piştî ku jinê zaroka xwe ya pêşî welidand destpêdike. |
| **Xwîna piştî ku zarok ji ber here** | Dema temenê beravêja wê heştê (80) roj û kêmtir be; ew xwîna di pey re îstîhaze ye. Dema berê wê di ser not (90) royî be; ew xwîna dipey beravêjê re nîfas e. Eger berê wê di neavbera 80 û 90î de bê; hukmê wê girêdayê bi xulqiyeta cenînê ve ye; eger şeklê insên girtibe, xwîna di pey re nîfas e, na; eger şeklê insên negirtibe; ew xwîna îstîhazê ye. |
| **Dema di nava çil royî de paqij bû, paşê beriya çil ro temembibe xwîn dît?** | Ew paqijiya ku jin di navbera çil royê nîfasê de dibîne, ew tuhr e (paqijî ye); ji wê xwe bişo, wê nimêj bike. Dema ku di nava çil royên nîfasê de dîse xwîn lêvegeriya; wê hingê ew ê hukmê nîfasê bigre. Heyanî ku çil ro temam bibe her wisa ye. |

**Çend agahdarî ne:** ✷Jina ku bi xwîna îstîhazê be lazim e ku nimêj bike. Lê belê ji bo her nimêjekê lezime desmêj bigre. ✷ Dema jin beriya roj here ava ji xwîna heyz û nîfasê paqij bibe; li serê lazime ku nimêja nîvro û esra wê royê eda bike. Dema ku beriya fecrê paqij bibe; lazim e nimêja mexrib û eşa wê êvarê eda bike. ✷Dema wextê nimêjekê hat û beriya ku nimêj bike jin tê de kete xwîna heyzê yan nîfasê; di vê rewşê de piştî ku paqij bû qezakirin ne lazim e. ✷Dema jinê xwest ku xwe ji heyz û nîfasê bişo lazime ku li cem şuştinê keziyên xwe veke, lê belê ji şuştina cenabetê ne lazime ku veke. ✷ Munasebeta bi jinê re di ziha (şermegeha) wê de di esnayê îstîhazê de mekrûh e. Lê belê dema hewcedariya mêr pê hebe helal e. ✷ Li ser jina di îstîhazê de, piştî ku xwe ji heyzê şuşt ku ji bo her nimêjê destmêj bigre. Ev rewş heyanî ku xwîn qut bibe dê dewam bike. ✷ Ji jinê re durist e ku dermanan bigre da ku xwîna heyza demekê bibire ji bo ku hec û umreya xwe temam bike û rojiya xwe bi temamî bigre. Ev jî, bi egera ku ji zerardayîna wan dermanan emîn be.

# Di îslamê de cihê jinê

Jin di xêr û qenciyê de, bi heseb bawerî û emel li cem Xwedê weke zilaman e. Pêxember (Selat û selam li ser bin) wiha gotiya: "***Birastî jin birayên mêran e.***" (Ebu Dawûd). Mafê wê heye ku doza heqqê xwe bike, zilmek li ser hebe mafê wê heye ku li ser xwe rake; ev jî ev e: fermana dînî ji bo zilam û pîrekê bi hevre ye. Jibilî ya ku li ser ferqkirina di navbera wan de ness hebe; ew jî bi nispet bal yên ku bi hev re ne hindik in. Ev jî, ji ber vê ye ku fermanên dînî xusûsiyetên zilam û pîrekê ji heysiyet hêz û qewet ve rî'ayet dike. Xwedê Teala ferman dike: "***Erê ma ew Xwedayê ku mirov çêkirin pê nizane û ew e yê hûrbîner ê agahdar***" (El-Mulk 14). Naxwe; ji jinê re hin wezîfe (erk) hene ku terxanên pê ne û ji mêran jî yên ku terxanên wan in hene. Çi têwerdaneke di ya ku terxanê bi ya din ve ye hebe; ew zerarê digihîne teraziya jiyanê. Belkî; digel ku jin di mala xwe de ye jî, lê bi qasî xêra zilam digihijîyê. Ji Esma keça Yezîd hatiye ragihandin ku ew çûye cem Pêxember (Selat û selam li ser bin), ew di nav sehabiyan de bû, wê got: -Diya min û bavê min bi qurbana te bin- Ez qasidê jina me ku hatima bal te û ez xwe hîn dikim. Lê belê çi jineke ku li roava û rohilat hebe, wê ev hatina min sehkiribe an nekiribe her ew mîna min difikire. Birastî jî Xwedê tu bi heqî bi bal mêr û jinan ve şand, vêca me bi te û bi wî Xwedayê ku tu şandî bawerî anî. Heçî ku em civaka jinan in; runiştiyê li malê û girêdayê bi karê wê ne, bingehên malên we ne, cihê pêkanîna daxwaza we ne, barhilgirê zarokên we ne û heçî ku hûn civaka mêran in; bi nimêja cum'ê (înê) û nimêja cemaet, bi serîdana nexweşan û haziriya ser cenazaan, bi çûna heccê sal li pey salê û ya ji van hemiyan bixêrtir bi cihada di rêka Xwedê de hûn di ser me re hatine girtin. Hinek ji we jî dema hûn bi qesda hec û umre û cengê derdikevin; em malê we diparêzin, cilê we didirûn û zarokên we terbiye dikin, vêca em di xêrê de nabin şerîkê we ey Resûlê Xwedê! Pêxember berê xwe da sehabiyan û got: "***Gelo we gotina jinekê ku mîna pirsa vê jinikê ku derhaeqî dinê xwe de pirskir we qet sehkiriye***? Sehabiyan got: Ey Resûlê Xwedê, me yeqîn nedikir ku jinek ser tiştekî wiha ve bibe. Pêxember (Selat û selam li ser bin) berê xwe da jinikê û got: "***Hey jinê, here cem hevalê xwe û ji wan re bibêeje: "Birastî jî ku yek ji we bermalitiyeke xweşik ji mêrê xwe re bike, bixwaze ku wî qayîl bike û bi gotina wî bike; ev dibe hemberê ya ku ji mêra re heye.***" Piştî vê yekê wê jinê pişta xwe da me, ji dilxweşî û dilşadiya xwe da tekbîr û tehlîlan." *(Beyheqî)*

Çend jin hatin cem Pêxember û gotin: Ey Resûlê Xwedê, zilaman bi cihada di rêka Xwedê de qencî ji xwe re birin, vêca ma ji bo me karek tuneye ku em pê bigihin xêra mucahidên di rêka Xwedê de? Pêxember (Selat û selam li ser bin) got: "***xebata yekê ji we di mala xwe de we digihîne karê mucahidê di rêka xwedê de.***" *(Beyheqî)*

Belkî Xwedê qenciya bi bal aqrebayên jin ve xêreke mezin hesibandiye; Pêxemeber dibêje: "***Çi kesê li ser du keçan yan du xwîşkan yan jî li ser eqrebayên jin infaq bike ku li ser wan nefeqe hesab bike heyanî ku têra wan bike yan Xwedê ji kerema xwe wan dolemend bike; ev jê re dibe sitara ji êgir.***" *(Ahmed, Teberanî)*

# Derbarî jinan de çend ehkamên dînî

✷ Heram e ku jin û mêrek bi hev re bin ku mehremekî jinê ne li cem be.[1] Pêxember (Selat û selam li ser bin) wiha dibêje: "***Zinhar, bila tucar jin û mêr bi hev re tenê nemînin ji bilî ku mehremê wê pê re bin***." **(Muttefequn eleyh)**

✷ Ji jinê re nimêja li mizgeftê helal e. Dema tirsa ji fitnê hebe mekrûh e. Diya muminan Aîşe dibêje: "***Eger Pêxeember gihabana tiştên ku evro jinan peydekirin; ew ê men'a wan ji çûna mizgeftê bikirana, çawa ku jinên îsraîliyan hatibûn meni'kirin***." **(Muttefequn eleyh)** Çawa ku nimêja mêran li mizgeftan xêra wê zêde ye, her wisa nimêja jinê di mala wê de xêra wê zêde ye. Jinek hate cem Pêxember û got: Ey Resûlê Xwedê ez hezdikim ku ez digel te nimêj bikim. Pêxember (Selat û selam li ser bin) got: "***Teqez ez dizanim ku tu hezdike ku digel min nimêjkê, lê nimêja te ya di oda te de bixêrtir e ji nimêja di hucra te de, nimêja di hucra te de bixhertir e ji nimêja di mala te de, nimêja di mala te de xêrtir e ji nimêja di mizgefta nav xelkê te de, nimêja di mizgefta nav xelkê te de xêrtir e ji nimêja di mizgefta min de.***" **(Ahmed)** Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje: "***Ji bo jinan mizgefta herî bixêr malên wan in***." ***(Ahmed)***

✷ Li ser jinan eger ku mehremên wan nebin Hec û Umre newacib e û sefera wan bêyî mehremên wan necaiz e. Pêxember (Silava û selama Xwedê li ser be) gotiya: "***Bila jinek bêmehrem zêdeyî sê royan dernekeve seferê***."***(Muttefequn eleyh)***

✷ Ji jinan re ziyareta qebran û rakirina cenazan heram e; bi sedema ku Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: "***Xwedê, li jinên ku qebran ziyaret dikin lanet dike***." Ummu Atiyye dibêje: "*Em ji çûna li pey cenaze hatin meni'kirin lê belê li ser me nehate şidandin.*" ***(Muslim)***

✷ Ji bo jinan rengkirina pora serî bi kîjan rengî dibe bila bibe helal e, rengkirina bi rengê reş mekrûh e. Ev jî bi egera ku xwazgîniyê xwe nexapîne.

✷ Ew para ku ji mîratê Xwedê jê re veqetandiye wacib e ku jê re were dayîn; heram e ku nedinê. Ji Pêxember (Selat û selam li ser bin) hatiye ragihandin: "***Çi kesê mîrateya mîratgirî nediyê; Xwedê, roja qiyametê ji mîrateya cennetê wî qut dike***." ***(Ibn Maceh)***

✷ Li ser mêr wacib e ku nefeqeyê jina xwe bidiyê; nefeqe, çiqas tişta ji xwarin, vexwarin, cil û xanî ku hewceyî pê hebe. Xwedê ferman dike: "***Yê destfireh bila nefeqê li gorî destfirehiya xwe bide, yê destteng jî ji malê ku Xwedê dayê bila nefeqê bide***." **(Telaq 7)** Eger ku mêrê wê tunebe; li ser bavê wê, birayê wê û kurê wê wacib e ku nefeqê wê bidinê. Eger ku nêzîk jê re nebin; baş dibe ku xelk nefeqê wê bidinê, bi sedema ku Pêxember (Selat û selam li ser bin) wiha gotiye: "***Ew kesê ku bi kar û barê jinebî û mîskînan ve radibe, mîna rewşa wî kesî ye ku di rêka Xwedê cihadê dike yan jî mîna kesê ku bi şev îbadet dike û bi roj rojî digre.***" ***(Muttefequn aleyh)***

✷ Jin, pirtir heqê wê ye ku zaroka xwe ya biçûk xwedî bike heyanî ku nezewice. Li ser bavê zarok jî heye ku nefeqe bide diya wî heyanî ku zarok di ber singa wê de bê.

---

[1] **Mehremê jinê:** Ew ê ku mehra jinê ebedî lê heram e. Ev; bav, kalik û çiqas berbijor ve here, kur, kurê kur û çiqas berbijêr ve here, bira û kurên wî, zarokên xwîşkê, ap, xal, bavê mêr û çiqas berbijor ve here, kurê mêr û çiqas berbijêr ve here, bav û bira û kurê ji şîr, mêrê kecê û mêrê dê ye.

✷ Ne baş e ku zilam silavê bide pîrekê, nemaze; dema ku jin ciwanbê yan tirsa fitnê hebê.

✷ Qusandina muyên heram, muyên bin cengan û jêkirina neynûkan di her înê de sunet e û ku zêdeyî çil royî nequsîne mekrûh e.

✷ Nems (hilkirina muyên rû û birhan) heram e. Pêxember (Selat û selam li ser bin) wiha gotiye: "***Xwedê li jina ku muyê birûyan hildike û ya ku biruyên xwe dide hilkirin lanetê dike.***" **(Ebu Dawûd)**

**IHDAD (Şîn):** Li ser pîrekê ku ji bilî mêrê xwe zêdeyî sê royan li ser mirî şînê bike heram e. Ji ber ku Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: **"*Ji bo jineke ku bawerî bi Xwedê û roja qiyametê anîbe ne helal e ku ji bilî mêrê xwe zêdeyî sê rojan li ser miriyan şînê bike*."(Muslim)** Naxwe; wacibe ku li ser mêrê xwe çar meh û deh royan şînê bikşîine. Li serê wacibe ku di şîna xwe de terka zînet û bînxweşiyê bike; mîna ku cil û bergên xweşik û rengîn li xwe neke, zînetên xwe bi xwe ve neke heyanî ku gustîlê jî nexê tiliya xwe, dermanê bînxweş bixwenede, bi hinê û rengan dest û pora xwe reng neke û bi kilê reş cavê xwe kilneke. Jêkirina neynûkan, qusandina muyên heram û şuştin helal e. Ji bo şîngirêdanê ji cilên ku li xwe dike tu reng nayê terxankirin. Wacib e ku şîngirêdana wê di mala mêrê wê de bê ya ku tê de mirî ye û ew jî tê de bû. Eger ne ji ber hewcedariyekê bê guhestina maleke din nedurist e. Ew bi roj ji mala xwe dernayê ji bilî ku hewcedariyeke wê hebe.

**QUSANDINA PORA SERÎ:**

Jin ku pora xwe bê sebeb biqusîne heram e; kinkirina wê helal e, bi egera ku xwe neşibîne zilam û kafiran. Delîla wê fermodeya Pêxember (Selat û selam li ser bin) e: "***Pêxember li wan jinên ku xwe dişibînin zilaman lanetê dike***."***(Tirmizî)*** "***Çi kesê xwe bişibînê qewmekî ew ji wan e***."***(Ebu Dawûd)***

✷ Dema jin ji mala xwe derkeve li serê wacib e ku bi çarşeveke ku ev şertên li jêr tê de hebin xwe bi nuxumîne. **Şertên çarşefê**: **1-** Pêwiste tevekê bedenê binixumîne. **2-** Gereke ew bi xwe ne cila zînetê be. **3-** Lazim e ku sitûr be ku bedenê nedê dîtin. **4-** Pêwist e ku fereh be; teng nebe. **5-** Gereke ne bibîn be. **6-** Ne şibihê cilên mêran. **7-** Ne şibihê cilê pîrekê kafiran. **8-** Lazime ku ne cila şuhret û difrê bê. Ew cila ku şeklê însan û heywanan li serê ye; lixwekirina wê, daleqandina wê, nixumandina diwaran pê û firotana wê heram e.

**EWRETÊ (şermegeha) PÎREKÊ:**

Şermegeha pîrekê li hember yên din li ser sê beşan e: **1-** Li hember mêrê xwe; ji mêrê wê re duriste cihê ku bixwaze lêbinêre. **2-** Li hember jin û mehremên wê, ciyê ku exleb xuya dibe ew dikarin lêbinêrin, mîna; rû, por, qirik, dest, ceng, ling û ... **3-** Li hember zilamên din, ji bilî îhtiyacê, mîna ku ji bo ku pê re bizewicê yan jî ji bo dermankirinê û xeynî van.. ew nikarin li cihekî jinê binêrin. Çima? Lewra fitna pîrekê bi ruyê wê ye. Fatîmaya keçe Munzir (Xwedê lê razîbe) got: "***Me ruyê xwe ji zilaman digirt.***" ***(El-Hakim)*** **Diya mumina Aîşe dibêje:** **"*Siwar di ber me re derbas dibûn û em digel Pêxember di îhraman de bûn; dema mêr dihatin hemberî me, me cilbabê xwe davêt ser ruyê xwe û dema ji me derbas dibûn me ruyê xwe vedikir*."*(Ebu Dawûd)***

## ÎDDEYÊ JÎNÊ
**(dema libendemayînê ya ku jin tê de nikare bizewice)**

**Îddê jinê çend beş in: 1- Îddê jina bihemle:** Jina bihemle dema mêrê wê bimre yan wê berde îddê (bendemayîna) wê bi danîna hemlê wê ye. **2- Jina ku mêrê wê miribe**: Bendemayîna wê çar meh û deh roj in. **3- Jina ku hatibe berdan û ew dikeve heyzan:** Bendemayîna wê sê heyzdîtin e. bendemayîn bi paqijiya ji heyza sisiyê bidawî dibe. **4- Jina ku hatibe berdan û ew nakeve heyzan:** Bendemayîna wê sê meh in.

Ew jina ku bendemayîna wê bi telaqê rec'î be, wacibe ku di esnayê bendemayîna xwe de digel mêrê xwe be. Ji bedena wê cihhê bivê durist e ku lêbinêre û heyanî îddê xwe biqedînê dikare pê re bitenê bimîne; hêvî heye ku di navbera wan de lihevhatin çêbibe. Vegera ji telaqê (dema telaq rec'î be) ne hewceyî qayiliya jinê ye; veger bi gotina mêr ku bibêje: min te vegerand yan jî mêr here nivîna wê hasil dibe.

✷ Jin nikare xwe nîkaha xwe bibire. Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje: "***Kijan jina ku bê destûra weliyê xwe nîkah bibe; nîkaha wê betal e***." **(Ebu Dawûd)**

✷ Ji bo jinê heram e ku porekê bi pora xwe ve bike û hinekî ji bedena xwe bideqênê. Ev herd kirinên han ji gunehê kebair in. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: "***Xwedê, li pîreka ku porê bi seriyan ve dike û ya ku bi serê xwe ve dike, pireka ku dideqênê û ya ku xwe dideqênê lanetê dike***. **(Muttefequn eleyh)**

✷ Ji bo pîrekê heram e ku berdana xwe ji mêrê xwe bê sebeb bixwaze. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: "***Kîjan pîreka ku berdana xwe ji mêrê xwe bêyî ku neqenciyek hebe bixwaze, vêca bîna cennetê li serê heram e.***" ***(Ebu Dawûd)***

✷ Li ser jinê wacib e ku bi rindî îtaeta zilamê xwe bike, nemaze dema wê gazî bal nivîna xwe bike. Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje: "***Dema zilam jina xwe gazî bal nivîna xwe bike, vêca ew neçe nivîna wî û zilamê wê xeydandî raze; heyanî sibehê melaîket lanetê lêdikin.***" ***(Muttefequn eleyh)***

✷ Jin, dema zanibe ku di riya wê de zilam werin jê re heram e ku bîna xweş bi xwe dake. Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje: "***Pîrek, dema bînê bi xwe dake û di ber xelkê re here da ku bîna wê bikin; vêca ew pîrek wisa ye, wisa ye; yanî ew zinêkar e***." ***(Ebu Dawûd)***

# MIJARA NIMÊJÊ

**Azan û Qamet:** Azan û qamet di hezerê de (ne di seferê de) li ser zilaman ferz û kîfaye ne. Ji bo merevê bitenê û ji bo yê musafir sunet in û ji bo pîrekan mekrûh e. Ji bilî nimêja sibehê durist nîn e ku beriya wext azan û qamet bêne dayîn; ji bo nimêja sibehê piştî nivê şevê azana ewil durist e ku bête dayîn.

**Şertên Nimêjê: 1-** Musilmanbûn e. **2-** Aqildarî ye. **3-** Bîrewerbûn e. **4-** Paqijbûn e, eger ku taqeta wî li ser hebe. **5-** Ketina wext e. **Wextê nimêja nîvro:** Dema roj ji nîvê quba azmên meyilî destpê dike heyanî siha her tiştî bibe mîna xwe. Piştî wê, wextê nimêja esrê (êvarê) destpê dike, heyanî ku sîha her tiştî bibe diqatê xwe; ev wextê îxtiyarî ye, paşê wextê zerûrî destpê dike heyanî roj here ava. Piştî roj çû ava wextê mexribê destpê dike heyanî şefeqa sor here ava dewam dike. Piştî windabûna şefeqa sor, wextê Eşayê destpê dike, heyanî nivê şevê wextê wê yê îxtiyarî dewam dike û wextê zerûrî heyanî elindê (şefeqê) dewam dike. Piştî şefeqdanê wextê nimêja Sibehê destpê dike û heyanî derketina rojê dewam dike. **6-** Setra ewret e.[1] **7-** Ji yê ku hêza wî hebe; bedena xwe, cilê xwe û nimêjgeha xwe ji necasetê biparêze. **8-** Berê xwe bide qiblê bi egera ku karibe. **9-** Niyet e.

**Riknên (bingehên) nimêjê: Riknên nimêjê çardeh in: 1-** Di nimêja ferz de lipiyabûn e, eger ku karibe. **2-** Niyet e. **3-** Tekbîra ihramê ye. **4-** Xwendina Fatihê ye. **5-** Di her rek'etê de çûna rukû'ê ye. **6-** Rabûna ji rukû'ê ye. **7-** Piştî ku ji rukû'ê rabû îdîdal (piştrastkirin) e. **8-** Li ser heft azayan çûne secdê ye. **9-** Rûniştina di navbera di secdan de ye. **10-** Xwendina Tehiyyata paşîn e. **11-** Rûniştina ji bo Tehiyyetê ye. **12-** Di tehiyyate paşîn de selata li ser Pêxember e. **13-** Silava ewil e. **14-** Seknandina di riknên fê'lî de ye. **15-** Tertîb e (li gorî rêzê pêkanîna van riknan e).
**Ev riknên me gotî nimêj bêyî wan ne durist e û bi nekirina yekî ji wan -çi ji qesd û çi ji şaşî be- riketek betal dibe.**

**Wacibên Nimêjê:** Wacibên Nimêjê: Heşt in. **1-** Ji bilî tekbîra tehrîmê tevekên tekbîran. **2-** Ji bona îmam û yê bitenê dema jı rukû'ê rabin, gotina: “سَمِعَ اللهُ لِمَنْ حَمِدَهُ” ye. **3-** Gotina: “ رَبَّنَا وَلَكَ الْحَمْدُ ” e. **4-** Di rukû'ê de, gotina: “ سُبْحَانَ رَبِّيَ الْعَظِيمِ " yek carekê. **5-** Gotina. ”سُبْحَانَ رَبِّيَ الأَعْلَى“ di sıcûdê de yek carê. **6-** Gotina: “رَبِّ اغْفِرْ لِي ” di navbera herdu secdan de. **7-** Xwendina: Teşehuda ewil e. **8-** Rûniştina ji bo teşehudê ye.
**Ev wacibat, eger bihemd terka wan bike nimêj betal dibe û eger ji şaşî ve neke ew ê here secda sehwê.**

**Sunetên Nimêjê:** Sunetên Nimêjê, di cure ne: Sunetê gotinî û yên kiryarî ne. Bi nekirina van sunetan -çi ji qesdî û çi ji şaşî- nimêj betal nabe.

**Heçî ku sunetên qewlî (gotinî) ne:** Duaye îtiftahê (وَجَّهْتُ), Euzu û besmele, gotina “أمين” e û ku wê eşker bibêje di cihê ku eşkere dixwîne, piştî fatihê xwendina hinekî ji Qur'anê, ji bo ku aşkereyî bixwîne (memûm naxwîne û yê bitenê bi kêfa xwe ye), gotina: “hemden.......” piştî “rebene lekel hemd” e, Di rukû û sicûdê de dubarekirina

---

1 **Ewret:** Şermegeha însên e û ya ku merev jê fihêt dike. Vêca ewretê merevê nêr ku heft salî be; pêş û paşiya wî tenê ye. Yê gihiştibe dehsaliya xwe, ewretê wî nevbera çok û navikê ye. Pîreka hur (azad) a ku kamil be ewretê wê; ji bilî ruyê wê tevekê bedena wê ewret e. Vêca di nimêjê de girtina ru mekrûh e, ji bilî ku zilamên nemehrem li balê bin, wê hingê girtina rûdêmê wacib e. dema jin nimêjke yan tewafke û hinek ji bedena wê vekirîbe, mesele mîna zendê wê, hingê îbadetê wê pûç û betal e. Ewretê pirbişerm; pêş û paş in. wacib e ku merev wan bigre çendî ku ne di nimêjê de jî. Bê hewcedarî derxistina wan mekrûh e, çendî ku bi tenê be û di tariyê de be.

"tesbihan" e, dinavbera herdu secdan de "rebbiğfir li" û duayên beriya silavdayinê ne.

**Heçî sunetên fê'lî (kiryarî) ne;** Li cem tekbîra tehrîmê, li cem çûna rukû'ê, li cem rabûna ji rukû'ê û li cem rabûna ji teşehuda ewil rakirina destan e, di qîyamê de destê rastê deynê ser yê çepê li bin sîngê de, li cihê secdeya xwe binêrê, di şipiyabûnê de herdu lingên xwe ji hev veke, dema here secdê pêşî herdu çokê xwe paşê herdu destê xwe paşê anî û pozê xwe deyne erdê, herdu enîşkên xwe ji kêlekê xwe dûrbikê, zikê xwe ji herdu ranê xwe û ranê xwe ji tejkê xwe dûrbike, herdu çokê xwe ji hev veqetîne, herdu lingê xwe ji heveqetandî biçikîne û hundirê tiliyan li ser erdê deyne, herdu destê xwe vekirî û tilî biheve zeliqandi li hemberî milên xwe deynê, li ser singa lingê xwe rabe û bi herdu destan îtîmada xwe berde ser çokê xwe, di navbera herdu secdan de û teşehuda ewil de îftîraşkî rûne, di teşehuda dawî de tewerukî rûne, di rûniştina navbera herdu secdan de herdu destê xwe vekirî û tilî biheve zeliqandi deyne ser ranê xwe, herwisa di teşehudê de jî, Lê belê; ew ê ji destê rastê tiliya qilîçê û tiliya gustîlê bigre û tiliya nîvî bi ya mezin ve girêdê û bi tiliya şehdê li cem gotina peyva "Ellehê" û duakirina wî îşareta bal tewhîda Xwedê ve bike, li cem silavê rûyê xwe li rast û çep bifetilîne û di tevekê bizavên xwe de ji rast ve dest pê bike.

**Secda Sehwê:** Dema gotineke meşrû ne di cihê wê de bê gotin, mîna ku di secdê de Qur'anê bixwîne, sunet e ku secda sehwê bibe. Dema terka sunetekê bike secda sehwê caiz e. Dema rukû'ekê yan sicûdekê yan qiyamekê yan runiştinekê zêde bike, yan beriya temambûna nimêjê silav bide yan xeletiyekê bike ku wate pê xera dibe yan terka wacibekî bike yan jî dema nimêjdike kete şikê ku zêde kiriye, wê demê secda sehwê wacib dibe û terka seca sehwê ya wacib eger ji qesdî be nimêj betal dibe. Vêca; eger bixwaze beriya silavê ew ê di secde bibe yan jî piştî silavê. Eger jibîra kir û navber dirêj bû secde dikeve.

**Şeklê kirina nimêjê:** Dema rabû ku nimêj bike; ew ê berê xwe bide qiblê û wê bibêje: "اللهُ أَكْبَرُ (***Ellahuekber***)". Îmam yê vê tekbîrê û tekbîrên din bi aşkereyî bibêje da ku yên li pey sehbikin, ji bilî îmamî yên din wê bidizî bibêjin. Dema dest bi tekbîrê kir ew ê destê xwe heyanî beranberî herdu milê xwe bilind bike, paşê yê wan deyne ser hev û yê bi kefa destê rastê destê çepê bigre û li bin singa xwe deyne. Ew ê li cihê secda xwe binêrê û hinek ji duayên ku ji pêxember waridbûne wê bixwîne. Mînak:

"وَجَّهْتُ وَجْهِيَ لِلَّذِي فَطَرَ السَّمَاوَاتِ وَالأَرْضَ حَنِيفاً وَمَا أَنَا مِنَ الْمُشْرِكِينَ، إِنَّ صَلاَتِي، وَنُسُكِي، وَمَحْيَايَ، وَمَمَاتِي لِلّٰهِ رَبِّ الْعَالَمِينَ، لاَ شَرِيكَ لَهُ وَبِذَلِكَ أُمِرْتُ وَأَنَا مِنَ الْمُسْلِمِينَ.

**Wateya wê:** "***Min tevlî xweparastina ji pûçîyê berê xwe ji dil da wî Xwedayê ku erd û asîman ji tuneyî afirandîye û ez qet ji muşrikan nînim. Birastî nimêja min, boraqa min, saxiya min û mirina min ji bona Xwedê ne ku ew perwerdegarê heyînê ye. Tu hevta (şirîk) jê re nîn in û her bi vê li min hatîye fermankirin û ez ji musilmana me.***"

Paşê ew ê euzû- besmelê bibêje, paşê fatihê bxwîne. Mustehebe ku di bêdengiya îmam de û di cihê ku îmam biaşkereyî naxwîne eger ku nimêja biaşkereyî be ku me'mûm jî fatihê bixwînin. Eger ku nimêja xwendindizîbe wê hingê xwendina fatihê wacib e. Paşê ew ê ji Qur'anê tişta dikare hinekî bixwîne; musteheb e ku sûreyên dirêj di nimêja sibehê de bixwîne, di nimêja mexribê de sûreyên kurt bixwîne û di nimêjên din de sûreyên navinc bixwîne. **Sûreyên tîwal ê mufessel**; ji sûreyê **Qaf** heyani sûreyê nebe (emme), **sûreyê navinc**; ji emme heyanî W**ed-duha** ye, **sûreyê kurt**; ji Duha heyanî Nas e. Îmam di nimêja sibehê de û di rik'etê ewil ji nimêja

Mexrib û Eşayê de ew ê fatihê û sûreyê di peyre aşkere bixwîne, di yên din de jî ew ê bidizî bxwîne. Paşê ew ê here rukû'ê û ew ê destê xwe deyne ser çokên xwe, tiliyên xwe ji hev veke û ew ê pişta xwe dirêj bike û serê xwe jî di rêza wê de û yê bibêje: "سُبْحَانَ رَبِّيَ الْعَظِيمِ" ***Ez perwerdegarê xweyê mezin pak didêrim***" sê caran. Paşî ew ê serê xwe bilind bike û wê bibêje: " سَمِعَ اللّهُ لِمَنْ حَمِدَهُ " "***Xwedê ji yê ku pesnê wî bide qabul bike*!**" Dema pişta xwe jipiya rastkir, dê bibêje: "رَبَّنَا وَلَكَ الْحَمْدُ، حَمْداً كَثِيراً طَيِّباً مُبَارَكاً فِيهِ" ***"(Hey) Perwerdegarê me! Pesn her ji te re be; pesnekî pir, rind, bi xêrûbêr*."**
Piştî vê ew ê bi tekbîrê here sicûdê; herdu enîşkên xwe ji kêlekên xwe û zikê xwe ji ji herdu ranên xwe dûr dike, destê xwe datîne beranberî milê xwe û li ser sertiliyên lingê xwe dê secde bibe digel ku berê tilîyên ling û destan li qiblê bê. Paşê di secdê de sê caran wê "سُبْحَانَ رَبِّيَ الأَعْلَى" "***Ez perwerdegarê xweyî bilind pak didêrim***. (3 caran)" bibêje. Ew dikare di sicûdê de zikrên ku ji Pêxember warid bûne yan jî çawa bivê dua bike.
Paşê, ew ê ji sicûdê bi tekbîr rabe; ew ê lingê xwe yê çepê razênê û li serê rûne, yê rastê jî dê rake û tiliyên xwe bi aliyê qiblê ve bitewîne, yan jî ew ê herdu lingan rake, berê tiliyan bide qiblê, wê li ser herdu pahniyê xwe rûnê û yê "رَبِّ اغْفِرْ لِي" "***Perwerdegarê min! Min bibexşîne***." du caran yan zêdeyî wê bibêje.
Ew dikare li ser wê vê jî zêde bike "اَللَّهُمَّ اغْفِرْ لِي، وَارْحَمْنِي، وَاهْدِنِي، وَاجْبُرْنِي، وَعَافِنِي، وَارْزُقْنِي، وَارْفَعْنِي"
**"*Xwedayê min! Min bibaxişîne, li min dilovanî bike, min serwext bike, kêmayi ya min rake, min rehet bike, min xwedanpar bike û min bilind bike*."**
Paşê eynî mîna secda ewil ew ê disa here sicûdê, paşê ew ê serê xwe digel tekbîrê rake û li ser singa lingê xwe raba piya û eynî mîna rik'eta ewil yê rik'eta diduyê bikê. Dema ji rik'eta diduyê vala bû ew ê ji bo teşehuda ewil bi îftîraşkî rûne; ew ê destê çepê deynê ser ranê çepê û destê rastê deyne ser ranê rastê digel ku tilîka qilîç û gustîlê bigre, tiliya beranî digel ya nivî bike xelek û bi tiliya şehdê îşaret bike. Di runiştina xwe de dê bibêjê: التَّحِيَّاتُ الْمُبَارَكَاتُ الصَّلَوَاتُ الطَّيِّبَاتُ لِله السَّلَامُ عَلَيْك أَيُّها النَّبِيُّ وَرَحْمَةُ الله وَبَرَكَاتُهُ السَّلَامُ عَلَيْنَا وَعَلَى عِبَادِ الله الصَّالِحِينَ، أَشْهَدُ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا الله وَأَشْهَدُ أَنَّ مُحَمَّدًا رَسُولُ الله
**Wateya wê: "*Yadîgarên mezin, her xêr û bêr, hemî nimêj û tiştên rind ji bona Xwedê ne. Hey Pêxamber! Silav li ser te, dilovanîya Xwedê û xêrûbêrên wî jî. Silav li me û li bendeyên Xwedê yên bi havil be. Ez şehdeyîyê didim ku ji Xwedê pêştir tu mabûdê heq tun in û ez şehdeyîyê didim ku Muhemmed qasidê Xwedê ye*."**
Paşê ji bo rek'eta sisiyê û çaran digel anîna tekbîrê rabe. Herdu rik'etên dawî eynî mîna yên ewil dê bike, tenê di wan de bi aşkereyî naxwîne, di wan de bes fatîhê dixwîne. Paşê ji bo teşehuda dawî yê tewerukî rûne; lingê çepê dirazîne û di bin lingê rastê de derdixe, lingê rastê û kulîmeka wê jî li ser erdê diçikîne (Tewerukî di teşehuda dawî de di wan nimêjên ku du teşehud din de hene çêdibe). Paşê di teşehuda dawî de wê "Ettehiyyatû" bixwîne û dipey wê re jî selata li ser pêxember, dê bibêje:

"اَللَّهُمَّ صَلِّ عَلَى مُحَمَّدٍ وَعَلَى آلِ مُحَمَّدٍ كَمَا صَلَّيْتَ عَلَى إِبْرَاهِيمَ وَعَلَى آلِ إِبْرَاهِيمَ، إِنَّكَ حَمِيدٌ مَجِيدٌ،
اَللَّهُمَّ بَارِكْ عَلَى مُحَمَّدٍ وَعَلَى آلِ مُحَمَّدٍ كَمَا بَارَكْتَ عَلَى إِبْرَاهِيمَ وَعَلَى آلِ إِبْرَاهِيمَ، إِنَّكَ حَمِيدٌ مَجِيدٌ"

**Wateya wê: "*Xwedayê min! Dilovaniyê li Muhemmed û li malbata Muhemmed bibarîne; çawa ku te dilovanî li Îbrahim û li malbata Îbrahim barandiye. Bêguman tu her hêjayê pesindayinê yî, her giranqedrî" Xwedayê min! Muhemmed û malbata Muhemmed avedan bike; çawa ku te Îbrahîm û malbata Îbrahîm avedan kiriye. Mîsoger tu her hêjayê pesindayinê yî, her giranqedrî"***
**Sunet e ku di pey re bibêje:**

**Wateya wê:** "اَللَّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنْ عَذَابِ الْقَبْرِ، وَمِنْ عَذَابِ جَهَنَّمَ، وَمِنْ فِتْنَةِ الْمَحْيَا وَالْمَمَاتِ، وَمِنْ شَرِّ فِتْنَةِ الْمَسِيحِ الدَّجَّالِ" ***"Xwedayê min! Birastî ez xwe ji ber azara gorê û ji ber azara dojê û jiber ceribandina jiyan û mirinê û ji ber felaketa deccalê çavbirû re misêwakirî xwe davême bextê te."*** û ji bilî wê duayêen ku warid bûne. Paşê ew ê bi di silavan silav bide; ku berê xwe bi aliyê rastê ve bada, wê bibêjê: "اَلسَّلاَمُ عَلَيْكُمْ وَ رَحْمَةُ اللهِ" paşê li aliyê çepê wê bade.

Di piştî edakirina nimêja ferz de sunete ku duayên ku ji Pêxember hatine bixwîne.[1]

**Nimêja merevê nexweş:** Dema ku jipiyatî nexweşiya wî zêde bike yan nikaribe jipiya nimêjke; bila rûniştî nimêj bike. Eger ew nikaribe rûniştî nimêjke bila ser kêleka xwe nimêjke. Eger wisa jî jê re zehmet be bila li ser pişta xwe nimêj bike. Eger nikaribe here rukû û sicûdê bila bi îşaretê bike û nimêjên ku lê fewitine bila qeza bike. Eger kirina her nimêjê di wextê wê de jê re zehmet were bila Nîvro û Esrê bîne serhev, her wisa Mexrib û Eşayê jî bine serhev, di wextê yekê ji wan de.

**Nimêja merevê musafir (rêwîngî):** Dema qunaxa sefara merevê rêwingî nêzî heştêûpênc (85) km bin û sefera wî jî helal be; jê re heye ku nimêjê çar rek'etî bi bal du rek'etan ve kurt bike. Eger di esnayê sefera xwe de niyet kir ku ew ê li cihekî zêdeyî çar royan bimîne (mudetê 20 nimêjan); piştî ku gihişt qunaxa xwe ew ê nimêja xwe bi temamî bike; biqesrînî nake. Eger merevê rêwingî li pey yê muqîm (nemusafir) nimêj bike, yan nimêjeke ku li hezerê jibîra kiribû vêca di seferê de hate bîra wî, yan jî di seferê de jibîra kiribû vêca di hezerê de hat bîra wî; di van temaman de ew ê nimêja xwe bi tememî bike. Merevê musafir jê re durist e ku nimêja xwe bi temamî bike; lê belê qesr (kurtkirin) bixêrtir e.

**Nimêja cum'ê (Înê):** Nimêja Înê ji nimêja Nîvro bixêrtir e. nimêja Înê nimêjeke bi serê xwe ye; ne ku kurtkirina nimêja Nîvro ye. Naxwe; ne durist e ku merev wê çar rek'etan bike û bi niyeta Nîvro jî neyê girêdan, bi tu awayî ne durist e ku nimêja În û Esrê bêne serhev, çiqas ku şertî cem'ê (serhevbûnê) hazirbin jî.

---

1 Tesbîhatê nimêjê ên ku ji Pêxember warid bûne:
"أَسْتَغْفِرُ اللهَ (ثَلاَثاً)" "Ez bexşandinê ji Xwedê divêm (***3 care***)
"اَللَّهُمَّ أَنْتَ السَّلاَمُ، وَمِنْكَ السَّلاَمُ تَبَارَكْتَ يَا ذَا الْجَلاَلِ وَالإِكْرَامِ" Xwedayê min! Her tu yî xwedanê aşîtiyê û aşitî her ji nik te ye. Tu pirozbe hey xwedanê mezinahî û comerdiyê."
"لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ وَحْدَهُ لاَ شَرِيكَ لَهُ، لَهُ الْمُلْكُ وَ لَهُ الْحَمْدُ وَ هُوَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ. لاَحَوْلَ وَ لاَ قُوَّةَ إِلاَّ بِاللهِ، لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ، وَلاَ نَعْبُدُ إِلاَّ إِيَّاهُ، لَهُ النِّعْمَةُ وَ لَهُ الْفَضْلُ وَ لَهُ الثَّنَاءُ الْحَسَنُ، لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ مُخْلِصِينَ لَهُ الدِّينَ وَ لَوْ كَرِهَ الْكَافِرُونَ"
"Ji Xwedê pêştir tu mabûdê heq tun in. Bi tenê ye, tu hevpişk jê re tun in, xwedanîya heyînê her jê re ye, pesn her jê re ye û ew li ser her tiştî re qedir e.Tu dagerîna ji gunehan û hêza (quwete) li ser qenciyê nîne ku ne bi Xwedê be. Ji Xwedê pê ve tu mabûdê heq tun in û em ji wî pê ve benitiya tu tiştî û tu kesî nakin, qencî her jê re ye, pircomerdî her jê re ye, ji Xwedê pê ve tu mabûdê heq tun in, em îbadet xwerû jê re dikin, çendî ku bi gawiran ne xweş be jî."
اَللَّهُمَّ لاَ مَانِعَ لِمَا أَعْطَيْتَ، وَلاَمُعْطِيَ لِمَا مَنَعْتَ، وَلاَيَنْفَعُ ذَا الْجَدِّ مِنْكَ الْجَدُّ "Xwedayê min! Tu asteng ji bona tişta ku tu bidê re nîn e û tu dayînkerê ya ku tu nedê nîn in û tu feyda malê maldar (jê re) li cem te tuneye.."
Piştî vê duayê wê ayetelkursî, paşê sureyê Îxlas, Feleq û Nas bi xwîne. Piştî xwendina van yê
(سُبْحَانَ اللهِ):Ez Xwedê ji her kêmasiyê pak didêrim **(33 caran).**
(وَالْحَمْدُ للهِ): Pesn hemû ji Xwedê re bin (**33 caran**).
(اللهُ أَكْبَرُ) : Xwedê herî mezin e **(33 caran**). Paşê ew ê ya sedî bi
"لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ وَحْدَهُ لاَ شَرِيكَ لَهُ، لَهُ الْمُلْكُ وَ لَهُ الْحَمْدُ وَ هُوَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ"
ya sedî temam bike.
Di piştî nimêja sibeh û mexribê de 10 caran (لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ وَحْدَهُ لاَ شَرِيكَ لَهُ، لَهُ الْمُلْكُ وَ لَهُ الْحَمْدُ وَ هُوَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ) dê bibêje û sûreyê Îxlas, Feleq û Nas jî 3 caran dubare bike.

**Nimêja Witir:** Nimêja witrê sunet e. Wextê wê; piştî kirina nimêja Eşayê heyanî derketina fecrê ye. Hindikê wê, rek'etek e. pirê wê, yanzdeh (11) rek'etin. Ya bixêr ew e ku di her di rek'etan de silav bide. Hindikê kemalê sê rek'etên bi di silavan e. Sunet e ku di rek'eta ewil de sûreyê Ala, di ya diduyan de sûreyê Kafîrûn û di ya sisiyan de sûreyê Îxlas bixwîne. Musteheb e ku tê de duaya Qunûtê piştî rabûna ji rikû'ê bixwîne û destê xwe tê de rake û bi aşkere dua bike, çendî ku ew bi serê xwe jî bê.

**Nimêja cenaze:** Şuştina miriyê musilman, kefenkirina wî, nimêjkirina li ser, hilgirtina wî û definkirina wî ferzûkifaye ye. Ji bilî miriyê ku di herbê de şehîd bûye; vêca ew nayê şuştin û nayê kefenkirin. Durist e ku li serê nimêj bête kirin. Ew ê di wê rewşa ku li serê şehîd bûye bê definkirin.

Zilam wê bi sê pêçanên ji qedekê sipî bê kefenkirin. Jin bi pênc cilan dê were kefenkirin; kiras, laçik, hevalkiras û di pêçanin. Di nimêjê de, sunet e ku Îmam û yê bitenê ku li pêşberî singa zilam ûhemberî noqa jinê bisekine. Ew ê li serê çar tekbîran bide. Di her tekbîrekê de ew ê destê xwe bilind bike. Di tekbîra pêşî de; bi dizî Euzu-besmele û fatihê tenê bixwîne, paşê ew ê tekbîra diduyê bide û ew ê li ser Pêxember selatan bide, paşê ew ê tekbîra sisiya bide û wê ji mîrî re dua bike, paşê ew ê tekbîra çara bide, ew ê piçekî bi sekine û paşî wê silav bide. Rakirina dîwarê qebrê zêdeyî bostekê, betonkirina wê, maçkirina wê, bixûrkirina wê, nivîsandin, rûniştin û meşa li serê heram e. Pêxistina çirayê li ser qebran, tewafkirina wan, çêkirina mizgeftan li ser wan û definkirina miriyan di mizgeftan de heram e. Xerakirina qubeyên li ser qebran wacib e.

➢**Te'zîye:** Di gotinên te'zîdanê de tiştekî ku merevî girêbide tune; yek ji gotinên ku were gotin ev e: أَعْظَمَ اللهُ أَجْرَكَ، وَأَحْسَنَ عَزاَءَكَ وَغَفَرَ لِمَيِّتِكَ **Wateya wê: “*Xwedê xêra te mezin bike û sebra te rind bike û mirîyê te bi bağişîne.*”**

✷ **Di tezîya musilmanî bi sedem yê kafir, dê bêje:** “ أَعْظَمَ اللهُ أَجْرَكَ، وَأَحْسَنَ عَزاَءَكَ ” **wateya wê:** ***“Xwedê xêra te mezin bike û sebra te rind bike”*** Tezîya kafirî nedurist e çiqas ku bi sedem yê musilman be jî.

✷ Çiqas kesê ku zanibe ku xelkê wî di mirina wî de ew ê li serê li xwe bidin lazim e wesiyet bike da ku li ser negrîn. Eger wesiyet neke; ew dê bigirîna li serê were ezabdayîn.

✷ Îmamê Şafi'î (*rehma Xwedê lêbê*) dibêje: Rûniştina ji bo te'zîdanê mekrûh e; ku ehlê mirî li cihekî bicivin da ku xelk tazîya wan bikin; belkî lazim e -çi zilam be çi pîrek- ku ji bo hewcedariyên xwe derkevin.

✷ Sunet e ku ji ehlê mirî re xwarinek were çêkirin. Ehlê mirî ku xwarinê çêkin ji bo yên ku têne te'zîyê mekrûh e û xwarina wê jî mekrûh e.

✷ Bêyî ku seferê bike, ziyaretkirina qebra merevê musilman sunet e. Ziyaretkirina qebra merivê kafir durist e. Yê kafir ji ziyaretkirina qebra yê musilman neyê paşdexistin.

✷ JÎ wî kesê ku diçe qebristanê sunet e ku bibêje:

اَلسَّلاَمُ عَلَيْكُمْ أَهْلَ الدِّيَارِ، مِن الْمُؤْمِنِينَ وَالْمُسْلِمِينَ، وَإِنا إِنْ شَاءَ اللهُ بِكُمْ لاَحِقُونَ وَيَرْحَمُ اللهُ الْمُسْتَقْدِمِينَ مِناَّ وَالْمُسْتَأْخِرِينَ أَسْأَلُ اللهَ لَناَ وَلَكُمُ الْعاَفِيَةَ اَللَّهُمَّ لاَ تَحْرِمْناَ أَجْرَهُمْ وَ لاَ تَفْتِنَّا بَعْدَهُ وَاغْفِرْ لَنَا وَلَهُمْ

Wateya wê: ***“Silav li we gelî bawermend û misilmanên di van xaniyande! Birastî emê jî -Xweda hezke- bigihêne we [û Xwedê dilovanîya xwe li yên pêşî -ji me- û li yên dawi ke] Ez ji Xwedê ji bona me û we xweşîyê di xwazim. Xwedayê min! Me ji xêra wan bêpar neke û piştî wan me neceribêne û me û wan bibexşîne***

**Nimêja herdu îdan (cejnan); Cejna remezanê û cejna Qurbanê.** Nimêja cejnan ferzûkîfaye ye. Wextê wê; mîna wextê nimêja duha ye. Eger piştî zewalê (dema

nîvro) hînbû ku îd e; ew ê sibeha roja din qeza bike. Şertê wê; ji bilî herdu xutban mîna înê ye. Di cihê ku nimêja îdê tête kirin de beriya wê û piştî wê kirina sunetan mekrûh e. **Awayê kirina nimêja îdê:** Du rik'et in, di rek'eta ewil de, piştî tekbîra tehrîmê û beriya euzu-besmelê wê heft tekbîran û di rek'eta diduyê de beriya fatîhê pênc tekbîran bide. Bi her tekbîrê re ew ê destê xwe rake. Paşê, ew ê euzu-besmelê û fatihê jî aşkere bixwîne, piştî fatihê di rek'eta ewil de sûreyê “Sebihisme” û di rek'eta diduyê de sûreyê “xaşiye” bixwînê. Dema silav da ew ê mîna xutba înê du xutban bixwîne; lê belê di xutbên îdê de sunete ku pir tekbîran di wan de bide. Eger ku nimêja îdê mîna nafîla (bê tekbîr) bike durist e, lewra tekbîrên zêde sunet in.

**Nimêja rojgirtin û heyvgirtinê:** Ev nimêj sunet e. Wextê wê, ji destpêkirina rojgirtin yan heyvgirtinê destpê dike heyanî ku girtina wan xelasbibe. Dema sebebê nimêjkirinê çû nimêja wan nayê qezakirin. Nimêja rojgirtin û heyvgirtinê, di rek'et in; di rek'eta pêşî de bi aşkereyî fatîhê û sûreyekî dirêj bixwîne, paşê ew ê rikûeke dirêj bike, paşê wê ji rikû'ê rabe û yê semie û hemide bêje, ew naçe sicûdê; belkî ew ê fatihê û sûreyekî dirêj bixwîne, paşê rikûeke dirêj, paşê dê serê xwe rake, paşê di secdeyên dirêj bike, paşê ew ê rek'eta diduyê eynî mîna ya pêşî bike, paşê teşehudê bixwîne û piştî wê yê silav bide. Eger yek piştî rikû'a ewil bigihe nimêjê; ew negihiştiya wê rek'etê.

**Nimêja daxwaziya baranê:** Dema erd ji bêavî hişkbû û baran kêmhat nimêja wê sunet e. Wextê wê, şeklê wê û hukmê wê weke nimêja îdê ye; bes di piştî nimêja baranê de ew ê xutbeke tenê bixwênê. Sunet e ku merev ebayê xwe berevajî lixweke bihêviya ku rewşa li ser merev were guherandin.

**Sunetên nimêjan:** Binecih bûye ku pêxember ji bilî nimêjên ferz 12 rek'et nimêjên nafîle kirine. Ew jî ev in: Du rek'et beriya nimêja sibehê, çar beriya nîvro, dido piştî wê, dido piştî mexribê û dido jî piştî Eşayê. Ji bilî van jî hin nafîleyên din jî waridbûne.

**Wextên ku nehya nimêjê di wan de hatiyekirin:** Di wan wextên ku nehya kirina nimêjên bêsebeb di wan de sabit bûye, kirina wê heram e. Ew jî ev in: **1-** Ji derketina fecrê heyanî derketina rojê û bilindbûna wê bi qederê rimekê. **2-** Dema roj hate nîva asîman heyanî ku bimeyilê. **3-** Ji piştî nimêja Esrê heyanî ku roj here ava. Heçî ku nimêjên bisebeb in; vêca kirina wan di van wextan de durist e. Mîna nimêja; tehiyyetul-mescit, di rek'etê nimêja tewafa Beytê, sunetê berî nimêja sibehê, nimêja cenaze, du rek'et nimêja desmêjê, secda tilawet û şukrê.

**Hin hukmên derheqî mizgeftan de:** Avakirina mizgeftan bi qederê hihtiyacê ferz e. Mizgevt, bi bal Xwedê ve cihê herî hezkirî ne. Di wan de, kilam, çepikdan, saz û caz, çêkirina helbestên heram, tevlîhevbûna mêr û jinan, munasebeta cinsî, kirîn û firotan heram e. Ji wî kesê ku di mizgevtê de kirîn firotanê dike sunet e ku merev bibêje: “***Xwedê ticareta te bi kar neyêne.***” Hereme ku tê de pirsa wendabûyên xwe bike. Sunete ku merev ji vî re jî bêje: “***Xwedê li te nevegerênê.***” Perwerdehîya zarokan ku zererê nedinê, girêdana nikahê, hukumdayîne li ser kêşeyekê, çêkirina helbestên helal, razana merevê di îtîkafê de, razana merevê musafir û razana merevê nexweş û qeylûle, ev tev durist in.

Sunet e ku merev mizgeftê ji her gotina çewt, ji gengeşê, ji axiftina zêde, ji bilindkirina deng di tiştê mekrûh de û bêihtiyacî merev wê bike rêbiwar.

Mekrhuh e ku tê de xeberdana zêde ji dinyayê bête kirin. Xaliyên wê, lembeyên wê û elektrika wê di dawet û te'zîyan de nayê bikaranîn.

# ZEKAT

**Sinif û celebên zekatê**: Zekat di çar celeban de wacib e. **Yekem;** sewalên çarpê, ewên ku bi devê xwe diçêrin. **Duyem**; ber û zadên ku ji erdê hêşîn dibin û derdikevin. **Sêyem;** biha û dirav. **Çarem**; pertalên bazirganîyê.

**Şertên wacibbûna zekatê**: Zekat bi pênc şertan wacib dibe. **Yekem;** mislimanbûn e. **Duyem;** azadbûn e. **Sêyem**; gihiştina nîsabê ye (yanî bi ber zekatê ketin e). **Çarem;** milkbûna tam e. **Pêncem**; derbasbûna saleke temam e. Lêbelê di ber û hatinên ji erdê de ev şertê pêncem nîn e.

**Zekata heywanên terşî**: Ew sê celeb in: Deveh (hêştir), dewar û pez in. Ji bo wacibbûna zekatê di wan de du şert lazim in: **1-** Divê salê tevî, yan jî pirranîya salê bi çêriyê xwedî bibin. **2-** Divê ew ji bo şîr û neslê bin; ne ji bo kar û ‘emel bin. Eger ew ji bo bazirganî û ticaretê bin, hingê zekata wan bi hesabê pertalên ticaretê tê dayîn.

## Zekata devehan

| Hejmar | 1-4 | 5 – 9 | 10 - 14 | 15 - 19 | 20 - 24 | 25 - 35 | 36 - 45 | 46 - 60 | 61 - 75 | 76 - 90 | 91- 120 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| **Zekata ku lêdikeve** | Zekat tê de tune | Pezek e | Du pez in | Sê pez in | Çar pez in | Bintumexadek | Bintulebûnek e | Huqqeyek e | Cez’eyek e | Du bintulebûn in | Du huqqe ne |

Dema deveh ji 120’an zêdetir bibin, ew çax ewê ji ber her pêncîyan ve huqeyekê derxe. Ewê ji ber çilan ve jî bintû lebûnekê derxe.

**Bintûmexad**: Ya ku temenê wê salek temam bûbe.

**Bintûlebûn**: Ya ku temenê wê du sal temam bûne.

**Huqe**: Ya ku temenê wê sê sal temam bûne. **Cez‘e:** Ya ku temenê wê çar sal temam bûne.

## Zekata dewaran

| Hejmar | 1-29 | 30-39 | 40-59 |
|---|---|---|---|
| **Zekata wan** | Zekat lê nakeve | Mozîkek e | Nogûn yan jî conegayek e |

Dema hijmara dewaran bigihîje 60’an û zêdetirî wan, ewê ji ber her sihan (30) ve mozîkekekî yan jî mozîkekê derxe. Ewê ji ber her çilan (40) ve jî conega, yan jî nogûnekê derxe. Mozîk, salek temam kiriye. Nagohn, yan jî conega; du sal temam kirine.

## Zekata pêz

| Hejmar | 1-39 | 40-120 | 121-200 | 201-399 |
|---|---|---|---|---|
| **Zekata wan** | Zekat lê nakeve | Pezek e | Du pez in | Sê pez in |

Dema hijmara pêz bigihîje 400’an, yan jî ji wan zêdetir, ew çax di her sed (100) pezî de pezek heye. Ji bo zekata pêz jî nêrî, peza zehf pîr, peza yek-çav, peza ku kehrikê xwe xwedî dike, peza avis û peza zehf bi qîmet, nayê wergirtin. **Pez**, ji cinsê mêşinan, ewa/ê ku şeş meh kirine. **Pez**, ji cinsê bizinan jî ewa/ê ku saleke temam kiriye.

**Zekata tiştên ku erdê derdikevin**: Zekat ji cinsê nebat û giyayan jî di her tene û fêkîyan de wacib e. Ji bo zekata wan jî sê şert hene. **1-** Divê ew giya ji wan tiştan be ku tê xwarin û dibe qût (ji bo zivistanê tê zexîrekirin). Wek genim û ceh ji lipan. Wekî tirh û qesban (xurmeyan) ji cinsê fêkîyan. Herçî ewên ku nayêne xwarin û dibin qût. Her wekî şînahî/sebze û beqlîyatan û yên wekî wan. Di wan de zekat nîn e.

**2- Gihiştina nîsabê** (Bi ber zekatê bikeve): Ew e ku 653 kg û zêdetirî wan hebe.

**3-** Divê ew nebat û giya jî di dema wacibbûna zekatê de milk û malê wî bin. Dema wacibbûna zekatê jî; xuyabûna bikêrhatina fêkî ye. Xuyabûna bikêrhatina fêkî jî; ew e ku sor bibe, yan jî zer bibe. Çandinî (lib û tene) jî bi şidihabûna lipê û hişkbûna wê ye.

Di wan tiştên ku bêyî ezîyet têne avdan de dehyek **(%10)** wacib e. Her wekî wan tiştên ku bi ava baranê û çeman têne avdan. Di wan tiştên ku bi meşeqqet, mesref û westanê têne avdan de nîvê dehyekê **(%5)** ye. Her wekî wê ava ku ji bîran û yên wekî wan tê derxistin. Herçî ew tiştên ku di hinek rojên salê de bi meşeqqet û zehmetîyê têne avdan û di hinek rojên salê yên din de jî ne bimeşeqqet û zehmetîyê têne avdan in, ew ji navbera herduyan li gorî pirranîyê ye. Hesab bi rêjeya hijmara rojên zehmetî û meşeqqet û ne meşeqqetê tê kirin.

**Zekata pere û diravan**: Ew jî du celeb in. **1-** Zekat zêr e. Heta ew negihîje **85 graman** zekat lê nakeve. **2-** Zekat zîv e. Heta ew jî negihîje **595 graman** zekat lê nakeve. Diravên ma‘denî û bankanotên kaxezî jî heta biha û nirxê wan di dema zekatê de negihîje kêmtirîn nîsaba zêr yan jî ya zîv zekat di wan de nîn e. Miqdarê zekata diravan jî **(%2½)** çaryeka dehê ye (ji sedî du û nîv e).

**Zekata zînetê mûbah:** Ewa ku ji bo bikaranîn û îstî‘malê hatiye amadekirin, zekat tê de nîn e. Lêbelê ew zînetên ku ji bo kirêdayînê, yan jî ji bo hilandinê hatiye amadekirin; tê de zekat heye. Ew miqdarê zêr û zîv yê ku lixwekirina wî bûye ‘adet ji jinan re mûbah e. Danîna tiştekî hindik ji zîv li ser firaxan jî mûbah e. Ji zilaman re caiz e ku bi awayekî serbixwe tiştekê ji zîv wergirin. Her wekî gustîl, berçavk û yên wekî wan. Herçî zêr e, danîna tiştekî hindik ji wî li ser firaxan heram e. Ji zilaman re caiz e ku tiştekî hindik ji zêr wergire; ew zêrê ku bi serê xwe, bi tiştekî din ve be. Her wekî bişkoka di cilê de, yan jî ji bo girêdana diranan be; ne ku xwe bişibihîne jinan.

**Çi kesê ku malek li cem hebe, zêde û kêm bibe û deranîna zekata her mebleğeke jê di sala wî de jê re zehmet be;** Ewê di salê de rojekê ji xwe re diyar bike û di wê rojê de zekata malê xwe bide. Di vê rojê de ewê binêre ka çiqas malê wî heye? Ewê ji sedî du û nîvê (%2½) zekat derxe. Eger hinek malê wî negihîje salê, yan ew kesê ku xwedan mûçe û meaşdar be, yan jî malekî wî heye, lê bi kirê dide; her wekî xanî û erdekê ku tiştekê jê li cem xwe nahêle, çiqas gelek be jî zekat lê nakeve. Eger ew malê xwe yê ji wan cinsan datîne ser hev û li cem xwe dihêle; heke sal di ser de derbas bibe, ew ê zekata wî bide. Eger ev jê re zehmet be, ew ê di salê de rojekê ji xwe re ji bo dayîna zekatê diyar bike, çawa ku berê derbas bû.

**Zekata deynan**: Ewê ku deynekî wî li mirovekî dewlemend hebe, yan jî malekî wî heye û mumkin e ku (ji destê deyndarê xwe) xilas bike, dema wî ew malê xwe xiste destê xwe, ewê ji ber wan salên ku di ser de derbas bûne ve jî zekata wî bide; çendî ew gelek be jî. Eger ku ew nikaribe malê bidest bixe; mîna ku deynî wî li mirovekî muflis be; vêva zekat tê de nîn e. Lewra ew di wî malê de nikare teserrufatiyê bike.

**Zekata pertalên bazirganîyê**: Ji bo zekata pertalên bazirganîyê çar şert hene. **1-** Divê ew mal û milkê mirovî be. **2-** Divê ku qesda wî pê bazirganî û ticaret be. **3-** Divê bihayê wan bigihîje nîsabê (miqdarê ku zekat lê dikeve) ku ew jî kêmtirînê nîsaba zêr û zîv e. **4-** Divê sala wan temam bibe. Dema ev şert mewcûd bin, ewê ji bihayê wan zekatê derxe û bide. Heke li kêleka pertalên bazirganîyê hinek zêr, zîv û hinek bankanotên wî yên din jî hebin, ewê bihayê wan jî bixe ser nirxên pertalên

bazirganîyê da ku bi wan re bigihîje hedê nîsabê. Heke mirovek niyet bike ku ew pertalê xwe yê bazirganîyê ji bo xwe îstî‘mal bike û bikar bîne; her wekî cil, xanî, otomobîl û dîgerên wan jî, hingê zekat di wan de nîn e. Heke paşê dîsa niyet bike ku di wan de bazirganîyê bike, ewê sala xwe ya zekatê ji nû ve bide destpêkirin. (Nîsaba pertalê bazirganîyê; bihayê **85 gram** zêr e; yan jî bihayê **595 gram** zîv e. Di dema derxistina zekatê de, kîjan ji wan kêmtir be, dikare zekatê ji wê derxe).

**Zekat'ul Fitr**: Ew li ser her mislimanî ferz e; dema ew xwediyê malekî be ku ew ji qûtê wî û qûtê malbata wî ya şev û roja ‘îdê zêdetir be. Miqdarê wê ji ber şexsekî ve çi mêr be, çi jin, **2.250 gram** ji cinsê xwarina welêt e. Ewê ku zekata fitrê lê bikeve, ewên ku di roja ‘îdê de nefeqê wan di stûyê wî de ye, lazim e ku ji ber wan ve jî zekata fitrê derxe; dema ku bi qasî wî miqdarî malê wî hebe. Musteheb e ku zekata fitrê roja ‘îdê beriya nimêja ‘îdê were derxistin. Ne caiz e ku ew heyanî piştî nimêja îdê were texîrkirin. Caiz e ku ew beriya roja Îdê bi rojekê yan jî du rojan were derxistin. Caiz e ku şexsekî tenê zekata fitrê ji ber komekê ve bide û ku komek jî ji ber şexsekî ve bide.

**Derxistina zekatê**: Derxistina zekatê fewren (bi lezgînî) wacib e. Lazim e ku ji ber yê biçûk û dîn ve welîyê wan zekatê derxe. Sunnet e ku xwediyê wê, wê aşkere bike û ew bi xwe wê ji hev veqetîne. Ji bo derxistina wê jî niyeta mukelleff (binbar û berpirsî) şert e. Eger niyeta sedeqeyeke mutleq bike, ew zekat çênabe; çiqas ku temamê malê xwe jî sedeqe bide. Ya baş ew e ku tevekê zekata malê xwe bide feqîrên welatê xwe û Ji bo meslehetê caiz e ku zekata malê xwe biguhêze welatekî din jî. Dema malê wî bigihîje nîsabê caiz e û durist jî dibe ku ew zekata du salan di pêş de bide.

**Ehlê zekatê**: Ewên ku zekat li wan diçe heşt cure ne. **1-** Feqîr in. **2-** Miskîn in. **3-** Karkerên li ser komkirina zekatê ne. **4-** Muellefetul qulûb in. **5-** Kole ne. **6-** Deyndar in. **7-** Ewên ku di rêya Xweda de cîhadê dikin. **8-** Rêwingî ne. Her yek ji wan cure mirovan bi qasî îhtiyaca wan ji zekatê ji wan re tê dayîn, ji bilî yê ku li ser komkirina zekatê karker e; vêca dê jê re bi gorî xebata wî bête dayîn; çendî dewlemend be jî. Dayîna wê ji bo xewarican û bağîyan jî çêdibe dema ew welatê mirov bixin bin hukmê xwe. Dema karbidest wê bi zorê ji mirov bistînin yan jî mirov bi dilê xwe bide wan, durist e; derbarî wê de çi bi edaletê tevbigerin, çi jî bi sitemkarî. Dayîna zekatê ji bo yên kafir, kole, dewlemend û ew ên ku nefeqê wan di stûyê mirov de ye û haşimîyan (seyyîdan) jî durist nîn e. Eger yek zekata xwe bide nemusteheqê wê û pê nizanibe ku ne musteheqê wê ye, paşê agahdar bibe ku ew ne musteheqê wê bû, zekata wî durist nîn e. Lêbelê heke bi zena ku feqîr e zekata xwe bide şexsekî, paşê xuya bibe ku ew dewlemend bûye, ew caiz e.

**Sedeqet'ut-tetewî** (sedeqeya dildarane): Peyxamberê Xweda (Selat û selam li ser bin) dibêje: ***“Birastî ji kar û barên muminî ku piştî mirina wî digihijinê; îlmekî bide fêrkirin û belav bike, yan weledekî salih e ku wî li pey xwe hiştibe e, yan mushefek e (nusxeyeke Qur’anê ye) ku bi weraset hiştibe, yan ku mizgeftek ava kiribe, ya ku ew ji bo rêwîyan xanek ava kiribe, yan (ji bo vexwarina mirov û terşan) çemekî herikandibe, yan jî ji malê xwe di rehetî û jiyana xwe de sedeqeyek derxistibe; ev tev piştî mirina wî digihijinê***.” **(Ibn Maceh)**

# ROJÎ

Li ser her musilmanekî ku balix be, biaqil be, hêza wî li ser girtina rojiyê hebe û ku pîrek be; ne di cil (heyz) û nîfasê de bê; girtina rojiya Remezanê li ser wacib e. zaroka ku qeweta wî li ser girtina wê hebe dê li ser girtina rojiyê bête emirkirin da ku jê re bibe adet. Ketina Remezanê bi yekê ji du tiştan tê zanîn: **1-** Bi şehdedayîna mislimanekî adil û mukellef (eqilmend û baliğ); çendî ku jin be jî, dîtina heyva wê ye. **2-** Bi temamkirina sih (30)ê meha Şabanê ye. Wacibbûna wê ji derketina fecra sadiq destpêdike heyanî ku roj here ava. Di rojîya ferz de lazim e ku beriya fecrê niyet lê were anîn.

**Mûfsîdatên rojîyê** (sebebên ku rojîyê dişkînin): **1-** Munasebata cinsî ye. Li ser yekî wiha qezakirin û kefaret lazim e. Kefaret: Azadkirina koleyekî ye, eger kole bidest neket; divê du meh rojî li ser hev bigre, eger nikaribe rojî bigre; ew ê xwarinê bide şêst (60) miskînî, eger ku nikaribe vê jî bike, wê demê tiştek li ser tun e. **2-** Hatina menîyê ye; çi bi sebeb maçkirin be, çi bi sebeb destdayîn be û çi jî bi destê xwe ji xwe berda be. Li ser yê muhtelim (ewê ku di xewê de menî jê hatibe) tu tiştek nîn e. **3-** Xwarin û vexwarina ji hemd (qesd) e. Eger ku ji bîra kir vêca xwaribe rojîya wî durist e. **4-** Bi hecametê yan jî ji bo xêrê derxistina xwînê ye. Heçî xwîna ku hindik be yan ji bo tehlîlê be, yan jî ewa ku bêyî îradeya wî derketibe, wekî xwîna ji birînê, yan ku ji pozê wî were, ew rojîyê xirab nake. **5-** Bi hemdê xwe ku xwe vereşinê. Eger toz bikeve qirika wî, yan avê li devê xwe werde, yan jî avê li pozê xwe werde û av bigihîje qirika wî, yan yekê bifikre û menî jê were, yan di xewê de îhtîlam bibe, yan jî bêyî qesda wî xwîn jê were , yan jî vereşe, ew rojîya wî xirab nakin. Ewê ku bi zena şevê xwarinê bixwe û eşkere bibe ku roj e, li ser wî qezakirin lazim e. Ewê ku bi şev bixwe û di derketina fecrê de bi guman be, ew rojîya wî xirab nake. Ewê ku di rojê de xwari be û di rojavabûnê de bi guman be, li serê qezakirin lazim e.

**Hukmê yên ku difitirin**: Li ser wî kesê ku uzrê wî nebe şikandina rojiya Remezanê heram e. Li ser jina di heyzan de, yan jî di nîfasê de û li ser wî kesê ku ji bo xilaskirina masûmekî ji helakê îhtiyaç pê heye, rojîşikandin wacib e. Ew rêwîyê ku jê re **qesirkirina** niêjê mûbah e, vêca rojîgirtin jî jê re zehmet be û ew nexweşê ku ji zirarê ditirse, ji bo wan îftarkirin sunnet e. Ji bo mirovê li malê ku di rojê de diçe seferê, ji bo jina bihemle û jina zaroka xwe şîr dide ku li ser xwe û zaroka xwe ditirsin, rojîşikandin mûbah e. Li ser van tevan tenê qezakirin heye. Jina bihemle û jina ku şîr dide, heke ji bo zaroka xwe tenê ditirsin, ewê digel qezakirinê ji ber her rojekê ve xwarina miskînekî jî bidin.

Ewê ku bi sebeb kalîtiyê, yan jî bi sedem nexweşîyeke ku rehetiya jê nayê hêvîkirin nikaribe rojî bigre, ewê ji ber her rojekê ve xwarina miskînekî bide û li ser wî qezakirin jî tun e. Ewê ku bi sebeb uzrekî qezakirina rojîya xwe texîr kir, heyanî ku Remezaneke din bi ser de hat, li ser wî qezakirin tenê heye. Lêbelê ewê ku bê uzr rojîya xwe texîr dike, heyanî ku Remezaneke din bi ser de hat, ewê digel qezakirinê ji ber her rojekê ve xwarina miskînekî jî bide. Ewê ku ji ber uzrekî xwe terka qezakirinê bike û bimre, tiştek li ser wî tun e. Ewê ku bêyî uzr terka qezakirinê bike û bimre, ji ber wî ve, ji bo her rojekê divê xwarina miskînekî were dayîn. Ji bo xizmên wî sunnet e ku rojîya Remezanê ya li wî çûye û rojîya nezr jî ya ku li wî

çûye, ji ber ve bigrin. Edakirina her nezrê ji ber wî ve (jê re) taet e. Ewê ku ji bo uzrekî rojiya xwe şikand û di esnayê rojîyê de uzrê wî nema, divê di muddetê mayî de xwe ji xwarin û vexwarinê bigre. Eger ku di naverojê de mirovê kafir misliman bibe, yan jina di heyzan de ji heyzên xwe paqij bibe, yan mirovê nexweş saxlem û rehet bibe, yan jî mirovê rêwî bigihîje malê, yan mirovê biçûk baliğ bibe, yan jî mirovê dîn biaqil bibe û ew ne birojî ne; lazime wê royê qeza bikin, çiqas ku ya mayî girtibin jî. Ewê ku di meha Remezanê de îftar jê re caiz be, ji bo wî ne caiz e ku di Remezanê de rojîyeke din bigre.

**Rojîya sunnet**: Çêtirînê wê: Rokê na yekê herê rojî bigre, paşê rojîya duşem û pêncşemê ye, paşê ji her mehê rojîgirtina sê rojan e; ji her sê rojan jî ya baştir, ji her heyva qemerî rojigirtina rojên spî (13- 14 û 15ê) ne. Sunnet e ku mirov pirranîya meha Mûherrem û Şa‘banê, roja ‘Aşûrê, roja ‘Erefê û şeş royên Şewalê rojî bigre. Mekrûh e ku mirov Recebê tenê, yan roja înê tenê, yan roja şemîyê tenê û roja şekê rojî bigre. Roja şekê roja sihê (30)ê Şa‘banê ye; dema sayî be. Rojîgirtina roja ‘îda Remezanê û roja ‘îda Qurbanê û rojên teşrîqan (her sê roên piştî ^şda qurbqnê) heram e. Lêbelê ewê ku bi sedem heckirina bi Temettu‘ û Qîranê li serê xwîn hebe, jê re ne heram e ku di wan de rojî bigre.

## Çend şîret û agahdarî ne

✷ Ew kesê ku bi cenabet be, yan jî ew jina ku di heyz û nîfasê de be ku ew beriya fecrê ji xwînê paqij bûbin, ji wan re caiz e ku heta piştî banga fecrê şûştina xwe texîr bikin û paşîva xwe jî ku beriya şûştinê bixwin caiz e û rojîya wan jî sehîh e.

✷ Ji bo jinê caiz e ku hinek dermanan bigre -eger ew ji zirarê ewle be- da ku di Remezanê de heyza xwe texîr bike bi qesda ku di kirina îbadetê de beşdarî mislimanan bibe.

✷ Ji bo rojîgirî caiz e ku tif û belğema xwe daqurpîne; dema ew di nava wî de bin.

✷ Peyxamber (Selat û selam li ser bin) dibêje: “***Ummeta min her di nav xêrê de ye, heta lezê li îftarê bike û paşîvê jî texîr bike.***” **Ehmed** . Di hedîseke din de wiha dibêje: “***Dînê Îslamê dê her pêşeng be, heta însan lezê li îftarê bikin. Lewra cihû û xristiyan wê texîr dikin.***” **Ebûdawud** .

✷ Li ber îftarê dû‘akirin musteheb e. Lewra peyxamber (Selat û selam li ser bin) dibêje: “***Ji rojîgirî re li ber îftara wî dû‘ayek heye ku bi şûn de nayê vegerandin.***” **Îbnmaceh** . Yek ji wan dû‘ayên ku li ber îftarê warid bûye ev e: “***Tîbûn çû, ra şil bûn û Xweda hezke xêr jî misoger bû.***” **Ebûdawud**.

✷ Sunnet e ku îftar li ser çend xurmeyên ter be, heke ew bidest nekevin li ser çend xurman be, eger ew jî bidest neket bila li ser avê be.

✷ Ji bo derketina ji îxtîlafê, bila rojîgir di esnaya rojîyê de ji çavkilkirinê, di çav û guhan de ji dilopberdana derman xwe dûr bigre. Lêbelê eger ku îhtiyaca wî bi dermankirinê hebe, xem nake, çendî ku te‘ma dermên bigihîje qirika wî û rojîya wî jî durist e.

✷ Li gorî qewlê sehîh **mîswak** di her demên rojîyê de bêyî mekrûhîyet sunnet e.

✷ Li ser rojîgirî wacib e ku terka xiybetê, nemîmet (xebergerandin)ê, derew û yên wekî wan bike. Eger ku yek xebera nexweş jê re bibêje, yan jî jê re çêra bike, bila bibêje: Ez bi rojî me! Bi parastina ziman û azayên xwe ji gunehan ew rojîya xwe diparêze. Birastî hatiye rîwayetkirin ku peyxamber (Selat û selam li ser bin) gotiye: ***"Ewê ku gotina derew û 'emelkirina pê terk neke, îhtiyaca Xweda jî bi terkkirina wan a xwarin û vexwarinê tun e!"*** **Buxarî** .

✷ Ji bo mirovê ku ji bo xwarinê hatiye gazîkirin sunnet e ku ji bo xwediyê xwarinê dû'a bike eger ku bi rojî be û eger ku fitar be bila xwarina wî bixwe.

✷ **Leyletulqedr** (şeva qedrê) çêtirîn şeva salê ye. Gihiştina wê bes terxanê bi deh şevên dawî yê Remezanê ye. Îhtîmala xurttirîn jî ev e ku ew şeva bîst û heftan e. Di vê şevê de kirina karû barên baş ji karê di hezar mehî de bixêrtir e. Çend 'elametên wê hene. Yek ji wan ew e ku di sibeha wê de roj spî û tîrêjên wê ne pirin û hewa wê jî normal e. Dibe ku misliman bigihîje leyletulqedrê û nizanibe ku ew leyletulqedr e jî. Naxwe tişta ku tê xwestin ev e: Bila di meha Remezanê de bi giringî li ser îbadetê xwe raweste. Bi awayekî taybetî jî di deh şevên dawîya wê de. Bila misliman ezm bike ku ew şeveke jê bêyî qîyam li xwe nebe. Dema ew nimêja Terawîhan bi cemaetî bike jî, heta îmam terawîhan tevan xilass neke, bila ew ji cemaetê neqere û neçe. Da ku qîyama şeveke temam jê re were nivîsîn.

✷ Ewê ku dest bi rojîya sunnet bike jê re sunnet e ku wê roja xwe temam bike; temamkirina wê li serê ne wacib e. Heke ew bi qesd wê rojîya xwe bixwe jî guneh jê re tun e û qezakirina wê jî li serê tun e.

**'Îtîkaf**: Ew e ku mislimanekî eqilmend ji bo taetê bikeve mizgeftê û tê de bimîne. Şert e ku îtîkafkar ji bêdesmêjîya mezin (cenabetê) paqij be. Heke ne ji bo tiştekî ku jê re bivê-nevê be, ew ji mizgeftê dernakeve. Her wekî xwarinê, pêkanîna îhtiyaca xwe (ya destavê) û serşûştineke wacib. Îtîkaf, bê hewcedarî bi derketina ji mizgeftê û bi munsebeta cinsî betal dibe. Îtîkaf di her wext û demê de sunet e, di meha Remezanê de bêtir sunet e û ji wê jî sunetir dehê paşî ji meha Remezanê ye. Kêmtirîn dema îtîkafê saetek e. Musteheb e ku ew ji şev û rojekê ne kêmtir be. Jin, bêyî îzna mêrê xwe nikare bikeve îtîkafê. Ji bo mirovê ku bikeve îtîkafê sunnet e ku bi îbadet û taetê meşxûl bibe û lazim e ku gelekî terka mûbahatan bike û xwe ji tiştê ku wî elaqedar nake jî dûr bigre.

# HEC Û ‘UMRE

**Hec û Umre**, di temenê mirovê musilman de carekê li serê wacib in. Şertên wacibbûna hecê pênc in. **1-** Musilmanbûn e. **2-** Biaqilbûn e. **3-** Balixbûn e. **4-** Azadbûn e. **5-** Karîn e; ku karibe zad û lêsiwareyê pêde bike. Çi kesê ku di bara hecê de îhmalkariyê bike hetanî ku bimre; dê ji malê ji ber wî ve hec û umreyek bête derxistin. Hecca mirovê kafir û dîn ne sehîh e; hecca zarok û koleyan sehîh e; lêbelê ew ji ber heca İslamê ve ji wan re çênabe. Ew ê ku ji bo çûna hecê îmkana wî nîn e, mîna mirovê feqîr, dema ew diravan ji xwe re deyn bike û bi wan here hecê, heca wî sehîh e. Ew ê ku ji ber dîgerê xwe ve biçe hecê; lêbelê ew ji ber xwe ve neçûbe heca îslamê; ev hec dikeve ber hecca wî bi xwe.

**Îhram**: Ew ê ku bixwaze îhraman li xwe bike, jê re sunnet e ku xwe bişoyê, xwe paqij bike, dermanê bînxweş li xwe bike û xwe ji cilên dirûtî dûr bigre. Ew du cilên spî û paqij pêşmal û piştmalekê werdigre. Paşê ew dikeve îhraman û dibêje: “لَبَّيْكَ اَللّٰهُمَّ عُمْرَةً "yan “لَبَّيْكَ اَللّٰهُمَّ حَجًّا” yan jî “لَبَّيْكَ اَللّٰهُمَّ عُمْرَةً وَحَجًّا” bi hec û umrê niyet dikim.” Heke ew bitirse ku (ji çûna hecê) were astengkirin, ew dikare şert bike û bibêje: “Heke hebiskarek min hebis bike, cihê min ew dever e ku lê werim hebiskirin.” Wê demê eger ji hecê were astengkirin; ne xwîn, ne qezakirina heccê lêdikevê Hacî, di navbera kirina sê nisûkan de bi dilê xwe ye, ku ew: **Hecc'ut-temettû**, **Hecc'ul-Îfrad** û **Hecc'ul-Qîran e**. Xêrtirînê wan **Hecc'ut-temettû,** ye. Ew e ku di mehên hecê de ji bo Umrê îhraman li xwe bike, paşê jê derkeve û paşê di sala xwe de ji bo hecê bikeve îhraman. **Hecc'ul-Îfrad:** ew e ku tenê ji bo hecê têkeve îhraman. **Hecc'ul-Qîran:** ew e ku ji bo Hec û Umrê têkeve îhraman. Yan jî ji bo Umrê têkeve îhraman, paşê beriya dest bi tewafa Umrê bike heccê jî bixe serê. Ewê ku qesda hecê dike, dema li ser lêsiwareka xwe tam siwar bû, ew ê telbiyê bîne, dê bibêje: ”لَبَّيْكَ اللّٰهُمَّ لَبَّيْكَ، لَبَّيْكَ لاَ شَرِيكَ لَكَ لَبَّيْكَ، إِنَّ الْحَمْدَ، وَالنِّعْمَةَ، لَكَ وَالْمُلْكَ، لاَ شَرِيكَ لَكَ“ (***Libê ji te re xwedêyo libê ji te re. Libê ji te re; tu hevpişk ji te re tun in, libê ji te re. Birastî hemu pesin û hemî qencî û xwedanîya her tiştî ji te re ye, tu hevpişk ji bona te tun in***). Musteheb e ku mirov wê pir bixwîne û dengê xwe jî lê berde û bilind bike; ji bo jinan; dengbilindkirin na!

**Mehzûratên** (qedeğeyên) **di îhraman de** nih in: **1-** Qusandina mûyan e. **2-** Jêkirina neynokan e. **3-** Lixwekirina cilên dirûtî ye, ji bo mêran; lêbelê dema pêşmal bidest wî nekeve, ewê derpê li xwe bike. Yan jî dema du pêlav bidest wî nekevin, ewê du xufikan wergire û wan ji jor ve jêke, heta ew bikeve jêra gwîzekan û li serê fidye jî nîn e. **4-** Nixumandina serî ye, ji bo mêran. **5-** Bêhna xweş e li ser beden û cilên xwe. **6-** Kuştina heywanên nêçîrê; yên berrî ne (ne kedî ne) û mûbah in. **7-** Aqda nîkahê ye; ew heram e û tê de fidye jî tun e. **8-** Destdayîna bi şehwet e, ku ne di ziha (fercê) wê de be. Fidyedana wê pezek e. Yan rojîgirtina sê rojan e. Yan jî xwarindayîna şeş miskînan e. **9-** Munasebeta cinsî ye. Heke ew di beriya îhram vekirina pêşî de be, heca wî xirab dibe. Divê ew heca xwe temam bike û di sala were de jî digel serjêkirina devehekê û belavkirina goştê wê li ser feqîrên Mekkê, ew ê wê qeza bike. Lêbelê heke ew di piştî îhramvekirina pêşî de çêbûbe, heca wî xirab nake. Lêbelê serjêkirina devehekê li serê wacib dibe. Heke ew di Umrê de here nivîna jina xwe, Umra wî xirab dike û li ser wî serjêkirina pezekê heye. Wacib e ku ew Umreya xwe qeza jî bike. Ji bilî munasebeta cinsî tu tişt Hec û Umrê betal nake. Di mijara hecê de jin jî her wekî mêr e. Lêbelê ew dikare cilên dirûtî li xwe bike û ew devrûkê yan poşî û lepikan wernagire.

**Fidye**: Du beş in. **1- li gorî tercîhê** ye; Ew fidye'ya porqusandin, bîn lixwedana, neynokjêkirin, sernixumandin û lixwekirina cilên dirûtî; ji bo mêran e. Ew mirovê ku yek ji van tiştan kiribe, di kirina van bijartekan de bi dilê xwe ye: Yan ew ê sê rojan rojî bigre. Yan ewê xwarina şeş miskînan bide. Ji bo her miskînî nîv sa'e (kîlo û nîv e). Yan jî ewê pezekê serjêke. Cezayê nêçîrê jî heywaneke wekî wê heywana çarpê ye, ewa ku kuştiye; heke heywanên wekî wê hebin. Eger heywanên wekî wê nebin; ewê nirxê wê derxe. **2- Li gorî tertîbê** (rêzê) ye; ew fidye'ya hacca temett'û û qîranê ye ku ew jî pezek e. Fidye'ya cîma'ê (munasebeta cinsî) devehek e. Eger ew bidest wî nekeve, ewê sê rojan li hecê rojî bigre û heft rojan jî li mala xwe, piştî ku vegera mala xwe. Hediye û xwarindayîn bes ji bo feqîrên Heremê ye.

**Ketina Mekkê**: Dema hacî bikeve Mescîdul Heramê, li cem ketina mizgeftan ewê zikrê meşr'û bibêje. Heke wî îhram bi hecca Temettû'ê li xwe kiribe, ewê dest bi tewafa Umrê bike. Heke wî îhram bi hecca îfradê yan jî ya qîranê wergirtibe, ewê dest bi tewafa qudûmê bike. Ewê nîvê piştmala xwe bixe bin milê xwe yê rastê û herdu serên wê jî deyne ser milê xwe yê çepê. Ewê bi "**Hecer'ul-eswed (berê reş)**" dest pê bike, destê xwe bide wî û wî maç bike, yan jî bi bal ve îşaret bike û bibêje: " بِسْمِ اللهِ واَللّٰهُ أَكْبَرُ " Ewê di her dewre û merhelê de wê dubare bike. Paşê ewê Beytê bixe rexê xwe yê çepê û ewê heft caran wê tewaf bike; ewê di her sê dewreyên pêşî de bi qasî qeweta xwe gavên xwe nêzîkî hev bavêje û lezê bike. Ewê di dewreyên mayîn de jî normal bimeşe. Çi dema were hîza'ya (dehma) ruknê Yemanî, eger karibe, ewê wî maç bike û wê di navbera herdu ruknan de bibêje:

"رَبَّناَ آتِناَ فِي الدُّنْياَ حَسَنَةً وَ فِي الآخِرَةِ حَسَنَةً وَ قِناَ عَذاَبَ النَّارِ" "Perwerdegarême di vê cihanê de rindîyê û di axretê de rindîyê bide me û me ji azara êgir biparêze"

Ew di wan dewreyên din de jî çi bixwaze, wê dû'ayê ji xwe re bike. Paşê eger mumkin bibe, ewê li pişt meqamî du rek'et nimêj bike; ewê di wan herdu rek'etan de sûreyên "Kafirûn û Îxlas" bixwîne. Paşê ewê pirr ji ava Zemzemê vexwe. Ewê li Berê Reş vegere; eger hêsan be, ewê dest bidiyê û wî maç bike. Paşê ewê li cem Multezemê (di navbera Berê Reş û Derî de) dû'a bike. Paşê ewê derkeve ser Sefayê, hilgere ser wê û bibêje: Ez ji ya ku Xweda pê dest pê kiriye dest pê dikim û ewê vê ayetê:

﴿إِنَّ ٱلصَّفَا وَٱلْمَرْوَةَ مِن شَعَآئِرِ ٱللَّهِ فَمَنْ حَجَّ ٱلْبَيْتَ أَوِ ٱعْتَمَرَ فَلَا جُنَاحَ عَلَيْهِ أَن يَطَّوَّفَ بِهِمَا وَمَن تَطَوَّعَ خَيْرًا فَإِنَّ ٱللَّهَ شَاكِرٌ عَلِيمٌ﴾

"Bêguman **Sefa** û **Merwe** ji nîşanên Xwedê ne. Naxwe kî bi sedema **Hec**ê yan jî bi sedema **Umrê** here seredana Beytê, li serê tu guneh nîn e ku di navbera her duyan de here û were. Kî bi dilê xwe bixwaze qenciyekê bike, bêguman Xwedê şukirdar e, zana ye" **(Beqere, 2/158)** bixwîne. Ewê Xwedê mezin bidêrê; yê tekbîr û tehlîlan bide, berê xwe bide rexê Ke'bê, herdu destên xwe bilind bike û dû'a bike. Paşê ewê dagere, peya bibe û ber bi "Alaya Kesk" ve bimeşe. Paşê ewê ber bi alaya din ve jî lezê bike. Paşê ewê bi meş heta bi Merwe'yê were. Ewê eynî wekî kirina xwe ya li ser Sefayê, bike. Lêbelê ewê ayetê naxwîne. Paşê ewê dagere, peya bibe û eynî wekî kirina xwe ya di dewreya pêşî de bike, heta heft dewreyan temam bike. Ji Sefayê heta bi Merwe'yê dewreyek e. Ji Merwe'yê heta bi Sefayê jî dewreyek e. Ewên din jî her wiha ne. Paşê ewê pora xwe kurt bike yan jî biqusîne. Qusandin ji kurtkirinê baştir e, eger ku ne Umre'ya temettû'ê be; lewra di piştî wê de hecê dike. Herçî ewê ku ji bo îfradê, yan jî ji bo qîranê îhram li xwe kiribe, heyanî ku roja 'îdê zixuran neavêje

cemre’ya Eqebê, piştî tewafa qudûmê ji îhraman dernakeve.. Jin jî her wekî mêr e. Lêbelê ew di tewaf û se‘yê de gavên xwe nêzîkî hev naavêje û bi bazdan naçe.

**Şeklê edakirina Hecê**: Dema bibe roja Terwrîyê (heştê Zilhiccê), eger ew ne di îhraman de be, ewê ji mala xwe ya li Mekkê îhraman li xwe bike û qesda Mînayê bike. Da ku şeva nehem tê de derbas bike. Dema tav (roja nehê) derkeve, ewê here ‘Erefatê. Paşê dema tava rojê zail bû, ewê nimêjên nîvro û Esrê (Êvarê) bi qesr û cem'ê bike. Erefat, ji bilî newala newala Urene hemû mewqif (rawestgeh) e. Ew ê vê gotinê pir bibêjê: لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ وَحْدَهُ لاَ شَرِيكَ لَهُ، لَهُ الْمُلْكُ وَ لَهُ الْحَمْدُ، وَهُوَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ “Ji Xwedê pêştir tu mabûdê bi rastî tun in, bi tenêye, tu hevpişk jê re tun in. Xwedanî her jê re ye, pesindarî her jê re ye û ew li ser her tiştî qadir e.”

Ewê di dûa, tobe û reğbeta bal Xweda ve pir cehdê bike. Dema roj here ava jî ewê bi hêdî û tenahî, digel xwendina telbiye[1] û duayan ber bi Mûzdelîfê ve wê bikişê. Dema ew bigihîje Muzdelîfê jî, ewê li wir nimêja meğrib û eşayê bi qesr û cem'ê bike. Paşê ewê şeva xwe li wir derbas bike. Paşê ewê li wir nimêja fecrê di ewwelê wextê wê de bike. Ewê li wir bimîne û dû‘a bike heta roj zer bibe.

Paşê ewê beriya hilatina rojê here. Dema ew bigihîje newala Muhessirê, eger karibe ewê pirr lezê bike, heta were Mînayê. Ewê bi cemre’ya ‘Eqebê dest pê bike û heft zixurên wekî zixurên paqoskê (mezinbûna wan di navbera leblebî û bindeqan de ne) bavêje. Ew ê bi her zixurî re tekbîr bîne û di zixuravêtinê de destê xwe bilind bike. Şert e ku ew zixur bikevin hewz de. Heke ew şexsê çavenêr lê nexe jî. Bi destpêkirina zixuravêtinê re telbîye (dû‘aya lebbeykê) tê qutkirin. Paşê ew hedîye/ qurbana xwe serjê dike. Paşê serê xwe diqusîne, yan jî kurt dike. Porqusandin ji porkurkirinê çêtir e. Bi zixuravêtin û porqusandinê hemû tiştên mehzûr (qedeğe) serbest dibin. Lêbelê nivîna jinê jê re helal nabe. Ev, vekirina ewil e (derketina ji îhraman a pêşî ye).

Paşê ewê li Mekkê vegere û tewafa îfadê bike; ev tewafa wacib e, ya ku hec pê temam dibe. Paşê heke temett‘ûker be, yan jî digel tewafa qudûmê se‘î nekiribe, ew ê di navbera Sefa û Merwê de se‘yê bike. Dema ew jî kir, hemû tiştên mehzûr (qedeğe) heta çûna nivîna jina wî jî jê re helal û serbest dibe. Ev, vekirina diduyê ye ji îhraman. Paşê ew ê vegere Mînayê û bi şevê wê li wir derbas bike bi rengekî ew wacib e. Ewê di piştî zewalê de di rojên wê de zixuran bavêje cemre’yan. Ewê her cemreyekê heft zixuran bavêjiyê. Ewê ji cemreya yekem dest pê bike vêca yê heft zixuran bavêjiyê. Paşê ew ê bi pêş ve were, raweste û dû‘a ji Xweda bike. Paşê ew ê were cemreya navîn û ew ê mîna ya ewil bavêjiyê. Ewê piştî wê jî dû‘a bike. Paşê ewê zixuran bavêje cemre’ya ‘Eqebê û li cem wê ranaweste. Paşê ewê di roja duyem de jî wisan zixuravêtinê bike. Heke ew bixwaze lezê bike, ewê beriya roj here ava ji wir derkeve. Heke roja diwazdehê roj here ava û ew hê li Mînayê be, divê ew şeva xwe li wir derbas bike û sibê jî zixuravêtinê bike. Lêbelê heke îzdîhamê ew li wir hebs kiribe û wî hewl dabû ku ji wir derkeve, ğem nake ku ew derkeve; çendî di piştî çûna rojava de be jî. Qîrankar jî wekî îfradkarî ye. Lêbelê her wekî temett‘ûkarî hediye/qurban li ser wî wacib e. Dema ew ji bo ehlê xwe

---

1 **Telbiye:** ”لَبَّيْكَ اللَّهُمَّ لَبَّيْكَ، لَبَّيْكَ لاَ شَرِيكَ لَكَ لَبَّيْكَ، إِنَّ الْحَمْدَ، وَالنِّعْمَةَ، لَكَ وَالْمُلْكَ، لاَ شَرِيكَ لَكَ“ “Libê ji te re xwedêyo libê ji te re. Libê ji te re; tu hevpişk ji te re tun in, libê ji te re. Birastî hemu pesin û hemî qencî û xwedanîya her tiştî ji te re ye, tu hevpişk ji bona te tun in.”

rêwîtiyê qesd bike, heta ew bi tewafekê xatir ji Beytê nexwaze, nikare derkeve. Da ku ew bibe dema wî ya dawîn li Beytê. Lêbelê jina di heyzan de be û jina di nîfasê de tewafa weda‘ê (xatir-xwestinê) ji ser wan dikeve. Eger ew di piştî wê de bi ticaretekê ve meşxûl bibe, ewê wê îade bike. Ew ê ku di beriya Weda‘ê de derkeve, eger nêzîk be, ew ê ji bo wê vegere: Lêbelê eger dûr bûbe, li ser wî xwînek heye.

**Ruknên Hecê çar in**: **1-** Ketina di îhramê de ye; niyeta despêkirina îbadetê heccê ye. **2-** Wiqûfa (sekna) li Erefatê ye. **3-** Tewafa îfadê ye (tewafa Beytê ya heccê). **4-** Sa‘ya hecê ye (ya di nevbera sefa û merwayê de) .

**Wacîbatên Hecê heşt in**: **1-** Ketina Îhrama ji mîqatê ye. **2-** Wiqûfa Erefatê heyanî rojava ye. **3-** Şevborandina li Muzdelîfê heyanî piştî nîvê şevê ye. **4-** Şevborandina li Mînayê di şevên Teşrîqê de (sê şevên piştî îdê). **5-** Remiya Cemeratan e (avêtina kevirkan e). **6-** Helq yan jî teqsîr (porqusandin yan porkurtkirin) e. **7-** Tewaful Weda'e (tewafa xatirxwestinê). **8-** Serjêkirina qurbanê ji bo yê ku hecca temettû'ê yan jî hecca qîranê kiribe.

**Ruknên Umrê sisê ne: 1-** Ketina di îhramê de ye; niyeta despêkirina îbadetê Umrê ye. **2-** Tewafa Umrê ye. **3-** Sa‘ya Umrê ye (ya di nevbera sefa û merwayê de).

**Wacîbatên ‘umrê dido ne**: **1-** Ketina Îhraman ji mîqatê. **2-** Helq yan jî teqsîr e (porqusandin yan jî porkurtkirin e).

* Çi kesê terka ruknekî bike; îbadet ku ne bi wî ruknî be temam nabe. Çi kesê terka wacibekî bike; ew bi xwînekê tê cebirandin. Çi kesê terka sunnetekê bike; tiştek li ser wî tun e!

**Şertên sehîhbûna tewafa Ka‘bê sêzdeh in**: **1-** mislimanbûn e. **2-** Biaqilbûn e. **3-** Nîyeteke mu‘eyyen e. **4-** Ketina wextê tewafê ye. **5-** Sitra ewretî ye, ji bo yê ku karibe. **6-** Tahirbûna ji bêdesmêjîyê ye, lêbelê ev ne ji bo zarokî ye. **7-** Bi yeqînî heft caran temamkirina tewafê ye. **8-** Ka‘be têxe rexê xwe yê çepê û xetayên ku kirine jî sererast û îade bike. **9-** Di meşa xwe de berepaş venegere . **10-** Meş e, ji bo yê ku karibe. **11-** Di tewafkirinê de lipeyhevî ye. **12-** Divê tewaf di hundurê Mescîdul Heramê de bibe. **13-** Divê destpêk ji **Hecer'ul-eswed** (Berê Reş) destpê bike.

**Sunnetên Tewafê**: Destdayîna Berê Reş e, maçkirina wî ye, tekbîranîna li cem wî ye, destdayîna ruknê Yemanî ye. Îdtîba‘e ye; (ser milê wî yê rastê tazî be ku nîvê piştmala xwe bixe bin milê xwe yê rastê û herdu serên wê jî deyne ser milê xwe yê çepê.) Reml e; (gavên xwe nêzîkî hev diavêje û lezê dike) û meşa di cihên wan de ye. Dû‘a û zikrê di esnaya tewafê de ne. Nêzîkbûna Beytê ye, paşê kirina du rek‘et nimêj li pişt meqamî ye.

**Şertên Sa‘yê neh in**: **1-** Musilmanbûn e. **2-** Biaqilbûn e. **3-** Nîyet e. **4-** Lipeyhevkirin e. **5-** Meş e, ji bo yê ku karibe. **6-** Temamkirina heft sa‘yan di navbera sefa û merwayê de. **7-** Di navbera Sefa û Merwayê de bêkêmasî sa'yê bike. **8-** Divê di piştî tewafeke sehîh de be. **9-** Divê destpêka sa'yê ji sefayê bi hejmara ferê dest pê bike û ji Merweyê jî bi hejmara zoyê destpêkê.

**Sunnetên Sa‘îyê**: Tahirbûna ji bêdesmêjî û necasetê ye, setra ewretî ye, dû‘a û zikrê di esnaya wê de ne, lezkirin û meşa di cihê wê de ye, hilgerîna Sefa û Merwayê û lipeyhevbûna di navbera wê û tewafê de ye.

**Tenbîh-hişyarî**! Ya herî baş ew e ku **Remyî** di heman roja xwe de be. Heke remîya wê rojê bihêle sibê, yan jî tevan texîr bike û bihêle dawiya Eyyam'ut-teşrîqan, caiz e.

**Dehîye/qurban**: Sunneteke muekked e. Dema kete dehê Zilhiccê de; li ser wî mirovê ku bixwaze qurbanê bide, heyanî ew ku qurbana xwe serjê neke heram e ku ew tiştekê ji kej, neynok, yan jî çermê qurbana xwe jê bigre.

**Eqîqe**: Sunnet e. Ew ji ber zaroka kurikî ve du pez e û ji ber ya keçikê ve jî pezek e. Ew di roja heftan ya ji dayîkbûna wî/wê de tê serjêkirin. Sunnet e ku di roja heftan de serê kurik were qusandin, bi qasî giranîya pora wî zîv sedeqe bidin û di wê rojê de nav lêbikin. Navên herî xoşewîst Ebdûllah û ‘Ebdurrehman in. Navên bi Ebdêiya xeynî Xwedê bêne navkirin heram in. Her wekî Ebdûnnebî, Ebdurresûl û yên mîna wan jî. Heke dema Eqîqe û qurban li hev rast werin, yek ji wan dikeve ber ya din û ew ji ber wê ve jî çêdibe.

**Feydeyeke mûhîm**: Çi kesê ku têkeve Mizgefta Peyxamber (Selat û selam li ser bin) ew ê bi du rek‘et nimêja Tehîyyet'ul-mescîdê dest pê bike, paşê ew diçe “Qebra Şerîf” û li pêşberî Wechê Peyxamber (Selat û selam li ser bin) radiweste, pişta wî dikeve qiblê û her wekî ku ew wî dibîne qelbê wî tije heybet e, vêca selamê didiyê û dibêje: ***Esselamû eleyke ya Resûlellah***! Eger ku zêdeyî vê bêje ew baş dibee. Paşê ew ê bi qasî zendekê bi aliyê rastê ve hereket bike û bibêje: Esselamû eleyke ya Ebûbekr'es-seddîq! Esselamû ‘eleyke ya Umerulfarûq! Xwedayê min, mukafata wan ji peyxamberê wan û ji Îslamê xêr binivîse. Paşê ew ê berê xwe bide qiblê, hicre dikeve çepê wî û ew ê dû‘a bike.

**Ev xulaseya ‘emelên Hecê ye:**

| HECKİRİN | TEMETU | İFRAD | QİRAN |
|---|---|---|---|
| Bi îhram û telbiyê despê dike | Ji bo Umra Temetu’ê Lebbeyk | Ji bo Hec û Umrê lebbeyk | Ji bo Heccê Lebbeyk |
| Piştre | Tewafa Umrê | Tewafa Qudûmê | Tewafa Qudûmê |
| Piştre | Sa’ya Umrê | Sa’ya Haccê | Sa’ya Heccê |
| Piştre | Qusandin (der ketina ji irama) | Di İhrama de ye | Di İhrama de ye |
| Roya 8ê piştî Nivro | Ji bo heccê li Mekkê dikeve îhrama | Çûna Mînayê | Çûna Mînayê |
| Roya 9ê piştî tavê | Çûna ‘Erefê, bi qesr û cem’î teqdîmî kirina Nimêja Nîvro û Esrê, paşê heta roj here ava ji xwe re dua bike | | |
| Piştî roj çû ava | Berê xwe dide Muzdelîfê û Nimêja mexrib û Eşayê bi qesr û cem li wir dike û heyanî nîvê şevê li wir diraze……….. | | |
| Roja Îdê (Zilhice 9)beriya fecrê, piştî roj derkeve | Berê xwe dide Minayê û şeytanê mezin bi heft zixuran direcimênê | | |
| | Qurban | Qurban | = = = = = = = |
| | Pora xwe kurt yan jibinîve jê dike, paşê tewafa İfadê (Heccê) dike; bi van herdikan xwevekirina ewi temam dibe û bi kirina sê tiştan vekirina diduyê jî temam dibe | | |
| | Sa’ya Heccê | = = = = = = = | = = = = = = = |
| Roja 11/12 Ji bol i paşmayî roya 13ê | Piştî Nîvro remya cemeratan e ( şeytanê biçûk, yê navê û yê mezin her yekî bi heft keviran di recimênê | | |
| Dema kete rê | Tewafa Wîda’ê (xatirxwestinê) dike. Ev tewaf li ser jina bi heyze û nîfas radibe. | | |

# Hinek feydeyên jihevcuda

✷ **Seyyîet (guneh)**: Ew bi çend kar û tiştan xîç dibe û jê diçe. Yek ji wan ev e; tobeya sadiq e, îstîğfar (lêborîn xwestin) e, karû barên qenc e, tûşîbûna bi bela û mûsîbetan e, dana sedeqa ye û dû‘ayên xelkê ne. Eger tiştek ji wan gunehan bimînin û Xweda jî li wan nebure; ew ê di qebrê de, yan di roja Qiyametê de, yan jî di agirê cehennemê de li ser wan gunehan were cezakirin, heyanî ji wan paqij bibe. Paşê ew ê bikeve cennetê; eger ku li ser baweriya tewhîdê miribe. Lêbelê heke ew li ser baweriya kufr û şirkê, yan jî li ser baweriya nîfaqê miribe, ew ê heta bi hetayê di agirê cehennemê de were hiştin. **Ma‘sîyet û guneh**, gelek bandor û tesîrên wan li ser însanî hene. Bandora wan li ser **qelb û dil** heye; ew bi tenêmayîn, tarîbûn, rebenbûn û nexweşîyê bi ser qelb de tînin û perdeyê tavêjin navbera wî û Xwedê de. Bandora wan li ser **dîn û dîyanetê** heye; ew xirabîyan bi ser de tînin û xwediyê wan ji taetê, ji dû‘ayên peyxamber (Selat û selam li ser bin), yên melaîket û mu’mînan mehrûm dihêlin. Bandora wan li ser **rizq** heye; ew xwediyê xwe ji rizq mehrûm dikin. Ni‘metan ji wî dibin û bereketê ji malê wî dibin. Bandora wan li ser kesan heye; ew bereketê ji temenê wan dibin, me‘îşeta teng û karên zor û zehmet bi ser wî de tînin. Bandora wan li ser **kar û baran** heye; ew nahêlin kar û ‘emel werin qebûlkirin. Bandora wan li ser **civakê** jî heye; ew ni‘meta asayîşê ji navê radikin, xela û dilaxêvîyê bi ser de tînin, karbidest û dijminan li serê musellet dikin û berf û baranê ji ser wê digrin. Ji bilî van hinek tesîrên din jî lê dikin.

✷ **Derd û xem**: Aramîya dil, keyfxweşîya wî û jêbirina derd, kul û xemên wî daxwaza her kesî ye. Lewra bi wî jiyana xweş û bextewar hasil dibe. Ji bo hasilbûna wê jî hinek sebebên dînî, tebîî û kiryarî hene. Ew ji mu’mînî tenê re tên cem hev. Yek ji wan sedeman ev e: **1-** Îmana bi Xweda ye. **2-** Bicihanîna fermanên Xwedê û dûrgirtina ji qedexeyên wî ye. **3-** Qencîya li mexlûqan e; bi gotin, bi kirin û bi her awayên baş. **4-** Meşxûlbûna bi kar û îlmên bi feyde, çi dînî, çi jî dinyayî bin. **5-** Di bara kar û barên paşeroj û pêşerojê de nefekrîn e; belkî ew bi karên xwe yên rojane meşxûl dibe. **6-** Zikrê Xweda pir bike. **7-** Ni‘metên Xwedê yên zahirî û batinî dibîra xwe bîne. **8-** Li rewşa mirovê ku ji me kêmtir be binêre; ne li yê ku di rewşa dinyayî de ji me çêtir be. **9-** Xebatkirina ji bo rakirina wan sebebên ku derd û xeman tînin û bidestxistina wan sebebên ku keyfxweşîyê tînin. **10-** Ji bo rakirina derd û xeman, divê mirov bi kirina hinek dû‘ayan xwe biavêje ber penaha Xwedê Teala.

**Feydeyeke mûhîm**: Îbrahîmê Xewas (*rehma Xweda lê be*) dibêje: Dermanên qelb pênc tişt in: Xwendina Qur’anê bi tedebburî ye, birçîkirina zik e rabûna (nimêj û îbadetê) şevê ye, zarezarkirina di dema seherê de ye û rûniştina digel merevê salih e.

✷ **Nîkah**: Zewac, ji bo mirovê xwedîşehwet ku ji ketina zinayê jî netirse, sunnet e. Ji bo kesê ku şehweta wî nebe mûbah e. Ji bo mirovê ku ji zinayê ditirse, zewac wacib e. Ew li ser heca wacib tê pêşxistin û nêrîna li jinê jî heram e.

**Şertên nîkahê: 1-** Pêwist e ku mêr û jin diyar bin. Naxwe dema çend keçên mirovekî hebin; vêca bibêje: Min yek ji van keçê xwe li te nîkah kir, ne sehîh e. **2-** Divê rizaya zilamê mukellef ê reşîd û rizaya jina azad a aqilmend hebe. **3-** Welî pîrekê ye. Naxwe jinek bi xwe nikare xwe bide zewicandin. Ji bilî welîyê wê tu kes nikare wê bide zewicandin. Lêbelê dema welîyê wê ji zewicandina wê ya bi mêrekî hemkufê wê re nexwaze, ew cuda ye. Ji bo zewicandina wê ji her kesî pêştir bavê

wê ye. Paşê bavê bavê (bapîrê) wê ye û çiqas ew bi jor ve here. Paşê kurê wê ye, paşê kurê kurê wê ye, çiqas bi jêr de here. Paşê birayê ji dê-bav e. Paşê birayê ji bavê ye û kurê bira ye... **4-** Şahid in; divê ji bo nîkahê du şahidên mêr, balix, biaqil û adil hebin. **5-** Divê mêr û jin di wan de ew sebebên ku ji zewaca wan re asteng in tunebin; mîna ku şîrê heev xwaribin, di navbera wan de neseb, xesû û xezûrtî nebê.

**Yên ku nîkahê heram dikin du cure ne:**

**Yekem;** hinek hene ku heta hetayê nîkaha wan li hev heram e. Ew jî çend qism in. **1- Bi sebeb nesebê ye.** Ew jî dê û dapîr e, çiqas bi jor de here jî, keç û keça weledên mirov e, çiqas bi jêr de here jî, xwîşka mutleq e (ji dêwbav be, çi ji bavê tenê be, çi jî ji dê tenê be), xwarziya mirov û keça kurê wê û keça keça wê ye. Keçên birayê merev in (çi birayê ji dêwbav be, çi ji bavê tenê û çi jî ji dê tenê be) û keçên keçan ni, keçên kurên wan û keçên kurê kurên in, çiqas ku ber bi jêr de herin jî. Met û xalet e, çiqas ew bi jor de herin jî. **2- Bi sebeb şîrdayînê ye.** Herambûna wê jî wekî ya nesebê ye, heta di xesû û xezûrtiyê de jî wisa ye. **3- Bi sebeb xesû û xezûrtiyê ye.** Ew jî dêya jina mirov û dapîrên wê û jinên sitûna neseba wê ne û keçheliyên mirov in, çiqas ew bi jêr de herin jî.

**Duyem**; ewên ku heta demekê heram in. Ew jî du celeb in: **1-** Bi sebeb ku wan bîne ser hev, her wekî ku xwîşkekê bîne ser xwîşka din (ku xwîşk bibin hewiyê hev), metik û biraziya wê yan jî xaltik û xwarzêka wê bibe ser hev (ku wan ji hev re bike hewî). **2-** Ji bo hin sebeban ku nikare nîkah bike. Lê belê dema sebeb ji holê rabûn dikare nîkah bike. Mîna jina ku mehrkirî be; dema ew hate berdan dikare wê nîkah bike.

**Feydeyeke mûhîm**: Heqê bavê nîn e ku kurê xwe bi jina ku ew naxwaze re mecbûrî ser zewacê bike. Di vê xusûsê de ne wacib e ku ew bi xebera dêwbavan bike. Ew bi vê yekê nabe ji yê ku bêemriya dêwbavan kiribe.

✷ **Telaq (jinberdan)**: Berdana jinê di heyz, nîfas û paqijbûneke ku çûbe nivîna wê de heram e. Lêbelê dema berde jî telaq çêdibe. Jinberdana ne ji îhtiyacê mekrûh e ku ji îhtiyacê be mûbah e. Ji bo wî yê ku ji nîkahê zirar dibîne, berdan sunnet e. Di xusûsa berdanê de îtaeta dêwbavan ne wacib e. Ew ê ku bixwaze jina xwe berde, ji carekê zêdetir berdana wê, jê re heram e. Gerek e, wê di paqijbûnekê de berde ku tê de neçûbe nivîna wê. Ew ê wê careke tenê berde û bêyî zêdekirina berdanê, wê wisan bihêle, heta îddetê wê bi dawî bibe. Ew jina ku telaqê wê rec'î bin heram e ku ji mala xwe derkeve. Ji mêrê wê re jî heram e ku berî temambûna îddetê wê, wê ji mala wê derxe. Telaq bi xeberdana pê waqî dibe û ew bi nîyetkirinê tenê waqî nabe.

✷ **Eyman/sond**: Ji bo di sondê de kefaret wacib bibe, çar şert hene. **1-** Qesda eqda yemînê ye. Naxwe; eger bê qesda sondê ew bi zimanê xwe bibêje, ew sond nayê girêdan û jê  re sonda pûç tê gotin. Nimûneya wê jî her wekî vê ye ku di nav axaftina xwe de bê qesda sondê dibêje: Na wellah! Belê wellah! **2-** Lazim e ku li ser tiştekî paşwext û mumkin sond bixwe. Naxwe; sonda li ser tiştekî dembuhurî ku ew pê nizanibe, yan zen bike ku ew rast dibêje, yan jî bi zanîn derew bike (ji vê cure sondê re "**yemînul ğemûs**" tê gotin, sonda ku sondxwerî noqî gunehan dike), yan jî ew li ser tiştekî paşwextê sond dixwe, zen dike ku rast dibêje, lêbelê xîlafa (dijê) wê xuya dibe, nayê girêdan. **3-** Gereke sondxwer bi îradeya xwe ya azad sond bixwe û kotekî li wî neyê kirin. **4-** Gereke di sonda xwe de gunehkar bibe; bi

rewşekî wisa; ya ku li ser nekirina wê sond xwariye wê bike û ya ku li ser kirina wê sond xwariye wê neke. Naxwe ewê ku sond bixwe û îstisnayê bike (her wekî bibêje; lêbelê ev ne tê de ye) kefaret li ser wî ne wacib e.

**Ew jî bi du şertan e: 1-** Divê îstisnayê bi sondê ve bike. **2-** Divê qesda wî girêdana sondê bi îstisnayê ve be. Her wekî bibêje; Wellahî, înşaellah. Naxwe ew kesê ku li ser tiştekê sond bixwe û meslehetê di xîlafa wê de bibîne; ji bo wî sunnet ew e ku kefaretê sonda xwe bide û wê tişta ku çêtir dibîne bike.

**Kefaretê yemînê**: Divê sondxwer xwarinê bide deh miskînan. Ji her miskînekî re sa‘ek û nîv xwarin e. Yanî kîloyek û 250 gram xwarin e. Yan ew ê wan miskînan bi cil bike, yan jî ew ê koleyekî azad bike. Ew ê ku yek ji van bidest wî nekeve, ew ê sê rojan li pey hev rojî bigre. Ew ê ku rojî bigre, digel ku dikare xwarinê bide miskînan, yan jî wan bi cil bike, ew ji stûyê wî dernakeve. Caiz e ku kefaretê beriya sondşikandinê yan jî piştî wê jî bide. Ew ê ku ji carekê zêdetir li ser yek tiştê sond bixwe, kefaretekî tenê ji ber wî ve çêdibe. Heke ew tiştên ku li ser wan sond dixwe, çend hejmar bin, ewê bi qasî hejmara sondên xwe kefaret bide.

✷ **Nezr** (li ser xwe pêwistkirin): Cureyên nezrê: 1- **Nezra mutleq e** (ya bê qeyd û şert). Her wekî bibêje: Eger ez rehet bibim, ji bo Xwedê ku ez nezrekê bidim, ne axive û nezreke diyarkirî qesd neke; vêca dema ew rehet bû kefaretê sondekê li wî dikeve. 2- **Nezra înad û hêrsbûnê ye**. Ewa ku nezra xwe bi şertekî ve girêbide bi qesda ku tiştekî neke, yan jî tiştekê bike. Her wekî bibêje; “Eger *ez bi te re xeber bidim, ezê salekê rojî bigrim*.” Hukmê wê: Ew serbest tê hiştin; yan ew ê tişta ku xwe pê ve girêdaye bike, yan jî ew ê kefaretê sondekê bide; dema ew pê re xeber bide. 3- **Nezra mûbah e**. Her wekî bibêje: Ji bo Xweda li min nezr be ku ez cilên xwe li xwe bikim! Hukmê wê: Ew serbest tê hiştin; yan ew ê cilên xwe li xwe bike, yan jî li xwe nake ew ê kefaretê sondekê bide. 4- **Nezra mekrûh e**. Her wekî bibêje; ji Xwedê re li min nezir be ku ez jina xwe berdim! Hukmê wê: Ji wî re sunnet e ku kefaretê sondekê bide û nezra xwe neyêne cih (û jina xwe bernede). Eger nezra xwe bîne cih jî, ti kefaret li serê tun e. **5- Nezra ku guneh e.** Her wekî bibêje; ji Xweda re li min nezir be ku ez dizîyê bikim! Hukmê wê: Bicihanîna wê heram e. Ew ê kefaretê sondekê bide. Heke ew wê nezra xwe bicih bîne, pê gunehkar dibe, lê ti kefaret li ser wî nîn e. **6- Nezra li ser teatê ye**. Bi qesda ku xwe nêzî Xwedê bike, bibêje: Ji bo Xwedê li ser min nezir be ku ez wiha nimêj bikim! Heke vê bi şertekê ve girêbide mîna şîfabûna nexweşekî, vêca ew şert hasil bû; li ser wî wacib e ku nezra xwe bîne cih. Eger bi şertekî ve girênede jî dîsa her divê ew wê nezra xwe bîne cih.

✷ **Rîda'/şîrdayîn**: Ya ku bi sebeb nesebê heram e, ji şîrdayînê re jî heram e. Ew jî bi sê şertan e. **1-** Divê ew şîr bi sedem wîladetê be, ne ji sebebekî din be. **2-** Divê şîrdayîna zarokî/zarokê di navbera herdu salên pêşî yên wîladetê de çêbûbe. **3-** Divê ew şîrdayînên zarokî bi awayekî yeqînî pênc û zêdetirî wan bin. Ji şîrdayînê meqsûd ew e ku zarok devê xwe ji sîngê berde, têrxwarin ne şert e. Bi şîrdayînê nefeqe û mîras misoger nabe.

✷ **Wesîyet**: Li ser mirovê ku heqek li ser hebe ku delil û şahid jî li ser tunebe, vêca wacibe wesiyet bike ku wî heqî piştî mirinê bidin xwediyê wî. Wesiyet, ji bo mirovê ku malekî pir li pey xwe bihêle, sunnet e; vêca musteheb e ku bi sedeqedayîna

pêncyeka wî ji bo feqîrekî lêzimê xwe yê ku ne waris be, wesîyet bike. Heke ew nebe, bila ji bo miskînekî, ji bo ‘alimekî, ji bo zilamekî salih wesîyet bike. Mekrûh e ku însanekî feqîr û xwedan waris sedeqedayîna hinekê ji malê xwe wesîyet bike. Lêbelê heke warisên wî dewlemend bin, ew mûbah e. Heram e ku însanek zêdetirî sêyeka malê xwe ji bo mirovekî biyanî bike wesîyet. Heram e ku însan hinekê ji malê xwe ji bo warisekî xwe bike wesîyet çiqas hindik be jî. Lêbelê heke warisên wî yên din di piştî wefata wî de wê caiz bidêrin, ew em nake. Dema wesîyetkar bibêje: Ez ji wesîyeta xwe vegeriyam, yan min ew betal kir, yan min ew guherand û peyvên wekî wê, wesîyet betal dibe. Musteheb e ku di serê wesîyetnama xwe de binivîse: “Bi navê Xwedayê bexşendeyê dilovîn. Ev wesîyeta filan kes e, ew şehda xwe tîne ku ji Xweda pê ve ti mabûdê heq tun in, ew yek e, jê re ti şirîk tun in. Ew şehda xwe tîne ku Mûhemmed bende û peyxamberê Xweda ye. Cennet heq e. Cehennem heq e. Qiyamet her tê, tê de hîç guman nîn e. Bêguman Xwedê yên di qebran de vejine û bal meydana heşrê ve bişîne. Ez li ehlê xwe yên ku li dûv xwe dihêlim wesîyet dikim ku ew xwe ji hêrs û ezabê Xwedê biparêzin û navbera xwe çêkin, bi xebera Xwedê û peyxamberê wî bikin, eger ku birastî mumîn bin. Ez wesîyeta ku Îbrahîm û Yaqûb li kurên xwe kiribûn li wan dikim: “***Gelî zaroyên min! Bi rastî Xwedê ev dîn ji bo we bijartiye. Nexwe hûn her bi misilmanî bimrin***.” **Beqere 132**.

✷ **Selat û selamên li ser peyxamber**: Musteheb e ku dema selat li ser peyxamber werin dayîn, selat û selam bi hev re li serê werin dayîn û li ser yekê ji wan neyê kurtebirkirin. Ji bilî peyxamberan mirovên din bi xweserî selat li ser wan nayê dayîn. Wek nimûne; Ebûbekir (Selat û selam li ser bin) yan jî -eleyhisselam- nayê gotin. Ew rewş bi mekrûhekî tenzîhî mekrûh e. Bi îcm‘a aliman caiz e ku mirov di selat û selamê de dîgerên peyxamberan jî bixe tabi‘ê wan. Wek nimûne ku were gotin: “Ellahûmme sellî ‘ela Mûhemmed in, weela alî Mûhemmed in, we eshabihî, we ezwacihî we zurrîyyetihî.” Musteheb e ku mirov razîbûn-xwestin û rehmxwestinê li ser sehabî, tabi'în, alimên piştî wan, abid û qencan bîne. Wek nimûne ku bête gotin: Ebûhenîfe, Malik, Şafî û Ehmed -Xweda ji wan razî be- yan jî -rehma Xwedê li wan be.

✷ **Serjêkirina heywanan**: Serjêkirina heywanan wacib e, da ku xwarina goştê wan caiz bibe. **Heywan jî çend şert tê de hene**: **1-** Divê xwarina goştê wî mûbah be. **2-** Divê mirov bikare wî bigre. **3-** Divê heywanekî ku li bejê dijî be.

**Çar şertên serjêkirinê hene**: **1-** Divê ew ê ku heywanan serjê dike, mirovekî biaqil be. 2- Divê aletê serjêkirinê ji bilî diran û neynokan tiştekî din be. Lewra serjêkirin bi herduyan ne caiz e. **3-** Divê stu, gewrî û herdu demarên jiyanê, yan jî yek ji wan bête jêkirin. 4- Dema ku destserjêkirinê kir lazim e ku bibêje “Bismillahî” û dema jibîra kir tiştek nabe. Ew ji bilî Erebî bi zimanekî din jî çêdibe ku bibêje. Digel besmelê tekbîr jî sunnet e, ku bibêje: (Bismillahî, Ellahuekber).

✷ **Seyd/nêçîr**: Ew bi destxistina rav û nêçîrê ye. Ji bo heywanê ku qesda nêçîrkirina wî tê kirin çend şert hene. **1-** Divê xwarina goştê wî/wê helal be. **2-** Divê ew bi tebîetê xwe wehşî (berî) be. **3-** Divê mirov nikaribe wî bi destan bigre. Hukmê wê; ew bi qesda nêçîrê mûbah e. Bi qesda leystik û mijulahiyê mekrûh e. Eger însan bi dûvketina heywanên nêçîrê ezîyetê bide mirovan, ew nêçîr heram e. **Nêçîr bi çar şertan caiz dibe**: 1- Divê nêçîrvan yek ji wan mirovan be ku serjêkirina wî caiz be.

**2-** Divê aletê serjêkirinê yek ji wan aletan be ku serjêkirina bi wî helal be. Yanî divê ew tûj be, her wekî rim û tîrê û yên wekî wan bin. Heke nêçîr bi heywanekî birrînkar be, mîna teyrê seqer, yan jî seh, tajî û tole divê ew perwerdekirî bin. **3-** Divê qesda kirinê hebe. Yanî aletê bi qesda nêçîrê berdide û dişîne. Lêbelê heke bêyî qesda xwediyê xwe ew alet li heywanekî bikeve, xwarina wî ne caiz e. **4-** Divê li cem berdan û şandina aletî "**bismillah**" bibêje. Bismillah li vir saqit nabe, çendan bi sehwkirin be jî, bêyî besmelê xwarina goştê wê nêçîrê heram e.

**✷ Te'am/xwarin:** Çiqas tişta ku tê xwarin û vexwarin e. Esil tê de helalbûn e. Her cure xwarin bi sê şertan helal e. **1-** Divê xwarin paqij be. **2-** Divê tiştekî zirardar tê de nebe. **3-** Divê ew ne pîs û biqerêj be.

Naxwe xwarina çiqas tişta necis heram e, mîna xwîn û goştê heywana mirar, tişta ku tê de zirar hebe, mîna jehrê û xwarina tişta pîs û qerêj, mîna rîx, mîz, sipeh û kêçê.

Ji heywanên bejî; kerên ehlî heram in û ew heywanên ku nabên/diranên xwe nêçîrê dikin, mîna; şêr, piling, gur, werşeq, seh, beraz, meymûn û pisîk -çiqas ku ew heywanê bejê bin jî- rovî û sihor heram in, lêbelê keftar helal e.

Ji teyran, ewên ku bi pençên xwe nêçîrê dikin, her wekî eylo, baz, seqer, başîq, şahîn, kulemar û bûm/kund heram in. Ewên ku laşan dixwin her wekî sîsar, sîsolekê Misrî û legleg ew jî heram in.

Çiqas heywanên ku Erebên bajarî ew xebîs û pîs dibînin, mîna çilê, mişk, şandelîk, mêşa hinguvîn, mêş, perperîk, hudhud, jîjoyê avî, sîxur, mar, ew heram in û heşeratên mîna kurmikan, koremişk, gûgerînek û bûka maran/yan jî marmaroşk, ew jî heram in.

Çiqas heywanên Şerî'etê bi kuştina wan emir kiribe, mîna dûpişk, yan jî kuştina wan qedeğe kiribe, mîna mîroyê, çêliyê ku ji heywaneke goşthelal û heywanekî goştheram çêbûbe, her wekî **Sîm'e**; çêliya keftarê ye ku dêya wê ji gur gohn xwariye, ew jî heram in. Lêbelê ew çêliya ku ji du heywanên cuda yên goşthelal çêbibe, her wekî ciwanîka hêstirê ya ku dêya wê ji kerekî wehşî, yan jî ji hespekî gohnxwaribe, ew ne heram e.

Ji bilî van heywanên navbuhurî yên din mûbah in; mîna heywanên terşî (deveh, dewar, pez, hesp) û heywanên kovî wekî zurafe, kîvroşk, kurîbeşk, cirdoxezal, debb (diya maran) û xezal e. Ji teyran jî; wekî hêştirme (teyrê ni'am) mirîşk, tawis, totî, kevok, çûkê beytik, ordek, qaz û tevekê teyrên avî û tevekên heywanên avî helal in, ji bilî beq, mar û timsahî ev heram in. Ew çandinî û fêkîyên ku bi ava necis hatine avdan, yan jî bi ziblê sinaî hatine zibilkirin, xwarina wan caiz e. Lêbelê dema ta'ma necasetê, yan jî bêhna wê ji wan were, ew heram e. Xwarina rijîyê, ax, herî, pîvaz û sîrê û yên wekî wan mekrûh e. Lêbelê heke ew werin pehtin, ne mekrûh e. Heke însan birçî bibe û mecbûrî xwarinê bibe, bes bi qasî ku ew bikare jiyana xwe pê bide îdamekirin, wacib e ku jê bixwe.

**✷ Tebrîkkirina cejnên kafiran û beşdarbûna wan û pêşî selamkirina li wan heram e.** Lêbelê dema ew pêşî selamê li me bikin, wacib e ku bi peyva "**we eleykum** (**li ser we be jî**)" li wan vegerînin. Heram e ku musilman ji ber kafir û ehlê bid'etê ve rabe ser xwe. Mekrûh e ku misliman wan hemêz bike. Herçî çûna sersaxîya wan û serdana wan e, heke ne ji bo mesleheteke dînî be, ew jî heram e.

# RUQYA ŞER'Î

## (DERMANKIRINA BI AYET Û HEDÎSAN)

Birastî ew ê ku derbarî sunetên Xwedê de difikire dizane ku derd û bela sunetek ji sunetên wî yê kewnî yên qederî ne. Xwedê Teala ferman dike: "***Sond be; em ê bi hinekî ji tirsê û birçîbûnê, bi kêmkirina mal û can û kêmkirina mêweyên we, we îmtîhan bikin (ka kî li ser belayê sebirkêş e û kî na) û mizgînê bide yên sebirkêş.***" **(Beqere 155)** Ew kesê guman dikin ku merevê salih ji derd û bela dûr in, ew şaş in.

Birastî ji Pêxember hatiye pirskirin; kîjan însan bela wî dijwar e? Pêxemeber got: "***Ew ên ku bele wan giran pêxember in, paşê merevê salih in, paşê ji mirovan yê herî nêzî wan. Mirov li gorî dîndariya xwe bi belayê re rûbirû dibe; eger di oldariya wî de hişkayî hebe, bela wî zêde dibe. Na; eger tê de tenikî hebe, bela li serê sivik dibe.*** ***(Ibn Maceh)*** Derd û bela ji nîşanên hezkirina Xwedê bi bende re ye. Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje: "***Dema Xwedê ji qewmekî hezbike wan bibela dike***." ***(Ahmed)*** Derd û bela ji nîşanên xêrxwestina Xwedê bi bende re ye; Pêxember wiha dibêje: "***Dema Xwedê qenciyê ji bendeyê xwe re bivê, di dinyayê de belayê didiyê û dema jê re xerabiyê bixwaze bi gunehên wî belayê jê digre, da ku roja qiyametê pê bidiyê.***" ***(Tirmizî)*** Derd û bela kefaretê gunehan e çiqas ku ew hindik bin jî. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiya: "***Her çiqas musilmanekî ku hebe ku eziyeta dirîyekê yan di ser wê re bigihiyê; Xwedê wê her dike kefaretê gunehên wî çawa ku dar pelê xwe diweşîne***." **(Muttefequn eleyh)** Ji ber vê yekê; ew musilmanê ku xwedanbela bûye, eger merevekî salih be, vêca bela dibe kefaretê gunehên bûrî, yan jî dereceyên wî bilind dike. Na; eger ew gunehkar be ew dibine kefaretê gunehên wî û dibe dibîranîna tehlîka gunehan. Xwedê Teala ferman dike: "***Ji ber gunehên ku mirovan bi destên xwe kirin, xerabî (nexweşî û tengasî) li bej û behrê xuya bûye, da ku Xwedê (bi vê yekê cezayê) hinekî ji ya ku kirin bi wan bide tehmkirin. Hêvî heye ku ew (ji gunehên xwe) vegerin (û tobe bikin).***" **(Rûm 41)**

**Beşên belayê (îmtîhanê):** Îmtîhana bi xêrê ye, mîna zêdekirina mal û îmtîhankirina şerê ye, mîna tirsê, birçîbûnê, kêmkirina mal e. Xwedê ferman dike: "***Emê her we bi şer û xêrê îmtîhan bikim***." **(Enbiya 35)** Îmtîhana bi nexweşî û mirinê jî ji vê ye, ew a ku sedemên wan ên herî mezin çav û sihr in, ku ew jî ji hesedê çêdibin. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiya: "***Pirê kesê ku ji umeta min dimirin piştî qeza û qederê bi sedem çavpêvedanê ye***." ***(Et-teyalisî)***

**Xweparêziya ji çav û sihrê:** Xweparêzî ji dermankirinê xêrtir e, naxwe; lazim e liser me ku em li ser xweparêziyê birijdbin. Ji xweparêriziyên herî girîng:

- Merev nefsa xwe bi baweriya tewhîdê teqwîye bikê û bawer bikê; ew ê ku di kaînatê de xwedanteseruf e Xwedê ye û divê pir zêde qenciyê bikê.
- Lazime ku husnuzenna wî bi Xwedê hebe, bila xwe bispêre xwedê û bila tu car nexweşî û çavlêdanê bi tu awayî wehm neke, vêca wehm bi serê xwe nexweşî ye.[1]
- Dema di nav xelkê de mirovek meşhûr bû ku ew çavpêved û sihirkar e, vêca lazim e merev xwe jê dûr bigre. Ev xwedûrkirin ji mijara sebeban e; ne ku tirs e.
- Li cem dîtina tiştekî ku li xweşya te diçe zikrê Xwedê bike û mubarek bike

---

**1** Bijîjk û pispor dibêjin: sêyeka nexweşên azayî ji sebebên psîkolojîk çêdibin ku wehma ji xwe re çêdikin ku ew nexweş in, digel ku nexweşî jî tune.

(duaya xêrê jê re bike).[1] Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: "*Dema yekî ji we ji xwe yan ji malê xwe yan ji birayê xwe tiştekî ku hezjêkir bibîne; bila duaya xêrê jê re bike, lewra çavpêvedan heq e*." *(Elhakim)*

✷ Her sibeh heft xurme ji xurmên ucweyên Medîna Pêxember (Selat û selam li ser bin) bixwe.

✷ Merev xwe bavêje ber penaha Xwedê, xwe bisipêre Xwedê, husnuzennê ji Xwedê bike, ji çav û sihrê xwe pê biparêzê û her roj sibeh û evaran zikr û duayên parêzker bixwîne. Ev zikr û dua ji wan re tesîrek heye, bi destûra Xwedê bi sebeb du rewşan zêde û kêm dibin: **1-** Bawer bike ku birastî ya di wan de hatiye heq e, rast e û ew bi destûra Xwedê feyde didin. **2-** Wan zikr û duayan bi zimanê xwe bibêje, guhê xwe bide ser û dilê wî li ser rûne. Lewra ew dua ne û dua jî ji dilekî xafil ê miştexûl neyê qebûlkirin, her wekî ku ev ji teref Pêxember ve ev hatiye duristkirin.

**Dema zikr û duayênparêzker:** Zikrê sibehan piştî nimêja fecrê têne gotin. Heçî ku zikrê êvarê ne; ew jî piştî nimêja Esrê têne gotin. Deme merevê nusilman xwendina wan jibîrakir yan jê xafil ma; bila dema hate bîra wî bixwîne.

**Nîşanên pêvedana çav û xeynê wê:** di navbera nojdarî û ruqiya şer'î de tu nakokî tune. Qur'an di ruqyê de ji bo nexweşiyên cesedî û nexweşiyên nefsî şifa ye. Dema mirov ji nexweşên cesedî saxlem be; vêca nexweşî axleb li ser şeklê serêşeke geroker, rûzerbûn, xwêdana pir û mîzkirina zêde, bêiştahî, di aliyan de tevzandin an jî tayên germ û sar, kute-kuta dil, ji jêrpişt û navmilan de êşeke geroke, bêtaqetî û tengezarîya di singê de, bêxewiya di şevê de, ji tirs û hêrsa neasayî hilçenîneke dijwar, pirbûna qulpik û keserberdanê, hezkirina tenêmayînê, laşgiranî û tembelî, hezkirina xewê û hinek arîşeyên tenduristî ên din ku tu sedemeke tibbî jê re tune ye, çêdibe. Carinan ev nîşan an hinek ji wan lê peyde dibin bi gorî hêz û bêhêziya nexweşîyê.

Merevê musilman lazim e ku bawerî û dilê wî biqewetbe; tasewas nekeviyê, bila nefsa wî tenê bi hestê xwe guman neke ku ew bi yekî ji van nexweşiyan nexweş bûbe. Ji ber ku guman nexweşiya herî dijwar e li hember dermankirinê. Carinan hinek ji van nîşanan li cem hin mirovan peyde dibin digel ku ew ne nexweş in jî, carina ev nîşan peyde dibin ku sebebê wan nexweşiya bedenî ye û carina jî bi sebeb kêmasiya îmanê ye, mîna bîntengî û laşgiranîyê, vêca di vê rewşê de lazime ku eleqa xwe bi Xwedê re çêbike.

**Dema nexweşî bi sedem çav[2] be; bi destûra Xwedê dermankirina wê bi yekî ji van herduyan çêdibe:**

**1-** Eger tu çavpêvedî zanibê; tu yê emrî wî bike ku xwe bişo û tu yê wê avê bigre, yan hinêkê ji bermayîya[3] wî bigre, paşê tu yê pê xwe bişo û jê vexwê.

---

1 Muberekirin ev e: Gotina "Xwedê ji bo te bixêr û bêr bike" ne ku bibêje: "Xwedê pîroz û qencîkar e."

2 **Nezer (çavpêvedan):** Ezyeteke ji cinan e, bi destûra Xwedê dikeve ser yê çavînoyî, bi sedem salixekî baş yan hezkirineke ji çavpêvedî şeytanê cinî li wir hazir dibe û nehêlek (mîna zikr û nimêj û xeynî van) tune ku nehêle cin zerarê bidinê. Fermodeya Pêxember a ku di Buxariyê de derbasbûye "**nezer heq e**" û di rîwayeteke din de ku di musneda Ahmed de derbas dibe "**şeytan û heseda mirovan li ser hazir dibe**" li ser vê rewşê şehdeyî dide. Çima jê re çavpêvedan tê gotin? Lewra ew aletê dîtin û salixdanê ye; ne ku çav bixwe xerabiyê digihîniyê, bi delîla ku yê kor digel ku nabîne jî çavînoyî dike.

3 **Eser (bermayîya çavpêvedî):** Çiqas tiştekî ku çavpêvedî dest dabiyê, mîna bermayîya xwarin û vexwarina wî yan jî tiştekî dest dabiyê; vêca yê ji wê bermayîyê hinekî bigre û yê di destmalekê bide û yê avê lê zêde bike; paşê li ser çavînoyê dake û pê bide vexwarin.

**2-** Eger ê çavpêved nediyarbe; wê hingê şefaxwestin bi ruqiyê, bi dua û hecametê çêdibe.

**Eger ku nexweşî sihir[1] be; dermankirina wê bi yekî ji van rewşan çêdibe:**

**1- Divê cihê sihrê nasbike:** Vêca dema sihr dît, ew ê girêkên wê vekê, ew ê mu'ewîzeteynan (sûreyê Feleq û Nas) bixwîne û paşê bişewitîne.

**2- Ruqye şer'î: Ruqye, bi ayetên Qur'anê, nemaze bi** mu'ewîzeteynan, bi sûreyê Beqere û duayan çêdibe. Dua dê paşê werin.

**3- Pûçkirina sihrê: Ev jî di cure ne: a- Heram e,** ku tu sihrê bi sihrê vekê yan herê cem sihîrbendekê da ku vekê. **b- Caiz e,** ev jî; ku tu heft (7) pelê dara kizwana bigrê û hûr bikê.. paşê sûreyê Kafirûn, Îxlas, Feleq û Nas sê caran bixwîne, paşê bixe nav avê, piştî wê vexwo û xwe pê bişo. Heyanî ku bi destûra Xwedê rehet bibe vê rewşê tekrar bikê." **(Ebdurrezaq di musennefa xwe de gotiya)**

**4- Derxistina sihrê:** Ev jî, eger di zik de bê; bi valakirina tiştê ku îshalê çêdikin derbixe û eger ne di zik de bê; bi hecametê[2] derdixe.

**Şertên ruqyê (du'ayê): 1-** Lazime ku bi ayetên Qur'anê bin û bi duayên ku ji Pêxember hatine. **2-** Lazim e ku bi zimanê erebî bin. Dua, durist e ku bi zimanên din jî be. **3-** Bawerî bîne ku Ruqye bi xwe tu tesîra wê li ser tune; şefa ji cem Xwedê ye. Ji bona ku tesîra xwendinê zêde çêbe lazime ku Quranê bi niyeta şefaê û bi niyeta hîdayeta cin û insa bixwîne.[3] Lewra Qur'an, ji bo rêhberî û şefaê nazilbûye. Qur'an, ji bo kujtina cinan nayê xwendin, jibilî ku bi riyên din derxistina wan zehmet be; wê hingê ji bo kujtina wan tê xwendin.

**Şertên du'axwênî: 1-** Lazim e ku musilman be û divê ku çak û teqwadar be. Çiqas ku teqwadariya wî zêde be tesîra duayê hewqas bihêz e. **2-** Di esnayê duakirinê de divê ku bi rastî berê xwe bide Xwedê, bi rewşekî wisa ku ziman û dil li serê yek bin. Ya baş ew e ku nexweş ji bo xwe dua bike, lewra; xeynê wî bi piranî dilê wan meşxûl e û tu kes mîna yê nexweş hest bi êş û hewcedariya xwe nake û heçî kesê ku naçar û hewcedar e, Xwedê soz daye ku duayên wan qebûl bike.

**Şertên yê ku dua ji bo wî tê xwendin: 1-** Têhezkirin ku ew xwedanbawer û salih be. Li gorî qederê baweriya wî tesîra wê mezin e. Xwedê wiha ferman dike: "***Em ji Quranê hin ayetan dişînin ku ew ji bawermendan re şîfa û rehmet in û ew ji ziyanê pê ve tu tiştî li zaliman zêde nake.***" **(Îsra 82)** **2-** Bi rastî berê xwe bide Xwedê ji bo ku wî şefa bike. **3-** Pêwiste ku di şefaê de ecele neke. Lewra; şefaxwestin duaye, dema li qebûlkirina wê ecele bike, teqez ew jê re nayê

---

1 **Sihr:** Girêdaneke kaxezî ye yan gotineke ku tê gotin an jî tiştek tê kirin ku ew di beden, dil û aqlê yê sihrlêbûyî de pêre pêre tesîr dike. Rastiyeke tesîra wê heye; tesîrek heye ku dikuje, yek heye ku nexweş dike, yek heye ku nahêle ku mêr here nivîna jina xwe û yek heye ku jin û mêra ji hev diqetîne. Qismekî sihrê kufr e û qismek jê gunehê mezin e.

2 Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiya: "Birastî dermankirina herî bixêr hecamet e." Xwedê bi sebeba wê gelek nexweeşiyên bedenî û nexweşiyên bi sedem çav û sihrê pê şefa kiriye.

3 **Niyeta hidayetê:** Ji bo ku dinê xwedê fêr bibe û karê baş bike û ji nebaşiyê xwe bide paş gaziya bal gohdariya Qur'anê ye. Ev niyet, hatiye ceribandin ku tesîra wê pir e; vêca cin bi Qur'anê muteessir dibe û bi piranî xerabiya wî bela xwe ji nexweşî zû vedike. Lê belê ku bi niyeta kujtina cinan bête xwendin ne wisa ne; ev rewş kibra cinan û zerera nexweşî bi xwe re tîne. Pêxember (Selat û selam li ser bin) gotiye: "Xwedê, di kar û barê xwe de bihêdî û nerm e û hez ji nermayîyê jî dike. Tişta ku bi sedem nermayîyê dide bi sedem tûndiyê nade.

qebûlkirin. Pêxember dibêje: “***Duayê we tê qebûlkirin bi egera ku ecele neke; dibêje: min ji xwedê dua kir, lê belê dua min qebûl nekir*.** **(Muttefequn eleyh)**

**Ji bo du'akirinê çend rêk hene: 1-** Xwendina dua digel pifkirinê (ku ew tifeke sivik e). **2-** Xwendina bê pifkirine. **3-** Mereev bi tiliyên xwe tifa xwe bigre, têxe nav axê, bike herî û pê di cihê nexweş bide. **4-** Dua bixwîne digel ku destê xwe di ser cihê nexweş re vemalîne.

## AYET Û HEDÎSÊN KU RUQYE BI WAN TÊN KIRIN

﴿ ٱللَّهُ لَآ إِلَٰهَ إِلَّا هُوَ ٱلۡحَيُّ ٱلۡقَيُّومُۚ لَا تَأۡخُذُهُۥ سِنَةٞ وَلَا نَوۡمٞۚ لَّهُۥ مَا فِي ٱلسَّمَٰوَٰتِ وَمَا فِي ٱلۡأَرۡضِۗ مَن ذَا ٱلَّذِي يَشۡفَعُ عِندَهُۥٓ
إِلَّا بِإِذۡنِهِۦۚ يَعۡلَمُ مَا بَيۡنَ أَيۡدِيهِمۡ وَمَا خَلۡفَهُمۡۖ وَلَا يُحِيطُونَ بِشَيۡءٖ مِّنۡ عِلۡمِهِۦٓ إِلَّا بِمَا شَآءَۚ وَسِعَ كُرۡسِيُّهُ ٱلسَّمَٰوَٰتِ وَٱلۡأَرۡضَۖ
وَلَا يَـُٔودُهُۥ حِفۡظُهُمَاۚ وَهُوَ ٱلۡعَلِيُّ ٱلۡعَظِيمُ ﴾ [1]

﴿ ءَامَنَ ٱلرَّسُولُ بِمَآ أُنزِلَ إِلَيۡهِ مِن رَّبِّهِۦ وَٱلۡمُؤۡمِنُونَۚ كُلٌّ ءَامَنَ بِٱللَّهِ وَمَلَٰٓئِكَتِهِۦ وَكُتُبِهِۦ وَرُسُلِهِۦ لَا نُفَرِّقُ بَيۡنَ أَحَدٖ مِّن
رُّسُلِهِۦۚ وَقَالُواْ سَمِعۡنَا وَأَطَعۡنَاۖ غُفۡرَانَكَ رَبَّنَا وَإِلَيۡكَ ٱلۡمَصِيرُ ٢٨٥ لَا يُكَلِّفُ ٱللَّهُ نَفۡسًا إِلَّا وُسۡعَهَاۚ لَهَا مَا كَسَبَتۡ
وَعَلَيۡهَا مَا ٱكۡتَسَبَتۡۗ رَبَّنَا لَا تُؤَاخِذۡنَآ إِن نَّسِينَآ أَوۡ أَخۡطَأۡنَاۚ رَبَّنَا وَلَا تَحۡمِلۡ عَلَيۡنَآ إِصۡرٗا كَمَا حَمَلۡتَهُۥ عَلَى ٱلَّذِينَ مِن
قَبۡلِنَاۚ رَبَّنَا وَلَا تُحَمِّلۡنَا مَا لَا طَاقَةَ لَنَا بِهِۦۖ وَٱعۡفُ عَنَّا وَٱغۡفِرۡ لَنَا وَٱرۡحَمۡنَآۚ أَنتَ مَوۡلَىٰنَا فَٱنصُرۡنَا عَلَى ٱلۡقَوۡمِ ٱلۡكَٰفِرِينَ ﴾ [2]

[3] ﴿ فَسَيَكۡفِيكَهُمُ ٱللَّهُۚ وَهُوَ ٱلسَّمِيعُ ٱلۡعَلِيمُ ﴾

[4] ﴿ يَٰقَوۡمَنَآ أَجِيبُواْ دَاعِيَ ٱللَّهِ وَءَامِنُواْ بِهِۦ يَغۡفِرۡ لَكُم مِّن ذُنُوبِكُمۡ وَيُجِرۡكُم مِّنۡ عَذَابٍ أَلِيمٖ ﴾

[5] ﴿ وَنُنَزِّلُ مِنَ ٱلۡقُرۡءَانِ مَا هُوَ شِفَآءٞ وَرَحۡمَةٞ لِّلۡمُؤۡمِنِينَ وَلَا يَزِيدُ ٱلظَّٰلِمِينَ إِلَّا خَسَارٗا ﴾

[7] ﴿ وَإِذَا مَرِضۡتُ فَهُوَ يَشۡفِينِ ﴾ [6] ﴿ أَمۡ يَحۡسُدُونَ ٱلنَّاسَ عَلَىٰ مَآ ءَاتَىٰهُمُ ٱللَّهُ مِن فَضۡلِهِۦ ﴾

[9] ﴿ قُلۡ هُوَ لِلَّذِينَ ءَامَنُواْ هُدٗى وَشِفَآءٞۚ ﴾ [8] ﴿ وَيَشۡفِ صُدُورَ قَوۡمٖ مُّؤۡمِنِينَ ﴾

---

[1] (Xwedê (ew e ku) tu mabûdê biheq ji Wî pê ve ttun in, her sağ e. her ragirê heyînê ye, ne xew wî digre ne jî hênijîn. Her jê re ye tişta di esmanan û ya di erdê de. Kî ye ewê ha, yê ku bê destura wî, li nik wi şefa‘etê bike? Tişta mirovan kirî û ya ku dê hê bikin ew pê dizanê. Ji ya ku wî xwestiye pê ve, kes bi tiştekî jî zanîna wî nizanin. Kursiyê wî erd û ezman di xwe de vehewandine. Parastina wan pê giran nayê û ew e yê bilind, yê mezin.)

[2] “Peyxamber bi wehya ku ji cem Xwedayê wî jê re hatî bawerî anî. Mu’minan hemîyan jî, bi Xwedê Te’ala û bi melaîketên Wî û bi kitêbên Wî û bi peyxamberên Wî bawerî anîn, (û dibêjin:) em cudayiyê naxina navbera tu yekî ji peyğemberên Wî (ku bi hinekan bawer bikin û hinekan jî înkar bikin). (Peyxember û mu’minan) Gotin: (Xwedayê me!) Me fermana te bihîst û em ji te re berdest bûn. Xwedayê me! Em lêbûrîna gunehên xwe ji te dixwazin û veger her bi bal te ve ye.Xwedê Te’ala her kesî bes li gorî hêza wî, wî binbar dike, xêra ku bi dest xistî her jê re ye û gunehên ku bidest xwe ve anine jî her di stuyê wî de ne. Xwedayê me! Eger em (fermanên te) jibîr bikin, yan jî em (qedexeyên te) bi bêhemdî bikarbînin, li me negre. Xwedayê me! herwekî te barê giran li yên berîya me kirî, wisa li me bar neke. Xwedayê me! barê ku em qe nikaribin hilgirin jî li me bar neke. Li kêmasîyên me bibûre, gunehên me veşêre û dilovaniyê xwe li me bike. Xwediyê me her tu yî, êdî (bi vê xwedîtîya) li hember desteka kafiran me serdest bike.”

[3] Êdî Xwedê li hember wan besî te ye. Her Ew e, yê bihîzer, yê zana. **(Beqere 137)**

[4] Ey qewmê me! Bersiva dozdarê (dînê) Xwedê bidin, baweriyê pê bînin, Xwedê jî dê li gunehên we bibûre û ji ezabekî dijwar we biparêze. **(Ahqaf 31)**

[5] Em ji Quranê hin ayetên dişînin ku ew ji bawermendan re şîfa û rehmet in û ew ji ziyanê pê ve tu tiştî li zaliman zêde nake. **(Îsra 82)**

[6] Yan jî, ma ew ji mirovan (Pêxember û hevalên wî) -ji ber qenciya ku Xwedê ji kerema xwe daye wan- çevnebariyê dikin? **(Nîsa 54)**

[7] Dema ez nexweş bikevim Ew e yê ku min şîfa bike. **(Şu’era 80)**

[8] .. û (Xwedê) dê dilê civateke bawermend mufa û şad bike. **(Tewbe 14)**

[9] Bibêje: Ev Quran, ji bo wan ên ku îman aniye, rêber û şîfa ye. **(Fussilet 44)**

[2] ﴿فَارْجِعِ الْبَصَرَ هَلْ تَرَىٰ مِن فُطُورٍ﴾ [1] ﴿لَوْ أَنزَلْنَا هَٰذَا الْقُرْآنَ عَلَىٰ جَبَلٍ لَّرَأَيْتَهُ خَاشِعًا مُّتَصَدِّعًا مِّنْ خَشْيَةِ اللَّهِ﴾

[3] ﴿وَإِن يَكَادُ الَّذِينَ كَفَرُوا لَيُزْلِقُونَكَ بِأَبْصَارِهِمْ لَمَّا سَمِعُوا الذِّكْرَ وَيَقُولُونَ إِنَّهُ لَمَجْنُونٌ﴾

﴿وَأَوْحَيْنَا إِلَىٰ مُوسَىٰ أَنْ أَلْقِ عَصَاكَ ۖ فَإِذَا هِيَ تَلْقَفُ مَا يَأْفِكُونَ ﴿١١٧﴾ فَوَقَعَ الْحَقُّ وَبَطَلَ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿١١٨﴾ فَغُلِبُوا
هُنَالِكَ وَانقَلَبُوا صَاغِرِينَ﴾ [4]

﴿قَالُوا يَا مُوسَىٰ إِمَّا أَن تُلْقِيَ وَإِمَّا أَن نَّكُونَ أَوَّلَ مَنْ أَلْقَىٰ ﴿٦٥﴾ قَالَ بَلْ أَلْقُوا ۖ فَإِذَا حِبَالُهُمْ وَعِصِيُّهُمْ يُخَيَّلُ إِلَيْهِ مِن
سِحْرِهِمْ أَنَّهَا تَسْعَىٰ ﴿٦٦﴾ فَأَوْجَسَ فِي نَفْسِهِ خِيفَةً مُّوسَىٰ ﴿٦٧﴾ قُلْنَا لَا تَخَفْ إِنَّكَ أَنتَ الْأَعْلَىٰ ﴿٦٨﴾ وَأَلْقِ مَا فِي
يَمِينِكَ تَلْقَفْ مَا صَنَعُوا ۖ إِنَّمَا صَنَعُوا كَيْدُ سَاحِرٍ ۖ وَلَا يُفْلِحُ السَّاحِرُ حَيْثُ أَتَىٰ﴾ [5]

[6] ﴿ثُمَّ أَنزَلَ اللَّهُ سَكِينَتَهُ عَلَىٰ رَسُولِهِ وَعَلَى الْمُؤْمِنِينَ﴾

[7] ﴿فَأَنزَلَ اللَّهُ سَكِينَتَهُ عَلَيْهِ وَأَيَّدَهُ بِجُنُودٍ لَّمْ تَرَوْهَا﴾

[8] ﴿فَأَنزَلَ اللَّهُ سَكِينَتَهُ عَلَىٰ رَسُولِهِ وَعَلَى الْمُؤْمِنِينَ وَأَلْزَمَهُمْ كَلِمَةَ التَّقْوَىٰ﴾

[9] ﴿لَّقَدْ رَضِيَ اللَّهُ عَنِ الْمُؤْمِنِينَ إِذْ يُبَايِعُونَكَ تَحْتَ الشَّجَرَةِ فَعَلِمَ مَا فِي قُلُوبِهِمْ فَأَنزَلَ السَّكِينَةَ عَلَيْهِمْ وَأَثَابَهُمْ فَتْحًا قَرِيبًا﴾

[10] ﴿هُوَ الَّذِي أَنزَلَ السَّكِينَةَ فِي قُلُوبِ الْمُؤْمِنِينَ لِيَزْدَادُوا إِيمَانًا مَّعَ إِيمَانِهِمْ﴾

## BEŞA HEDÎSAN (FERMODEYÊN PÊXEMBER):

[11] أَسْأَلُ اللهَ الْعَظِيمَ رَبَّ الْعَرْشِ الْعَظِيمِ أَنْ يَشْفِيَكَ ۞

[12] أُعِيذُكَ بِكَلِمَاتِ اللهِ التَّامَّةِ مِنْ كُلِّ شَيْطَانٍ وَهَامَّةٍ وَمِنْ كُلِّ عَيْنٍ لَامَّةٍ ۞

[13] اللَّهُمَّ رَبَّ النَّاسِ أَذْهِبِ الْبَأْسِ وَاشْفِ أَنْتَ الشَّافِي لَا شِفَاءَ إِلَّا شِفَاؤُكَ شِفَاءً لَا يُغَادِرُ سَقَمًا ۞

---

[1] Eger me ev Quran li ser çiyayekî bihinarta, bi rastî te dê ew bidîta ku wa ye ji tirsa Xwedê tirsgirtî, berdestbûyî û parçeparçe bûye. **(Heşir 2)**

[2] Vêca de berê xwe bidê ma tu kêmasiyekê tê de dibînî? **(Mulk 3)**

[3] Bi rastî, hindik mabû ku yên kafir wê dema li Quranê guhdarî dikin ji kerb û kîna xwe te çavînî bikin û te bixin erdê. Dibêjin: Bi rastî jî ew dîn e. **(Qelem 51)**

[4] **117-** Me peyxam ji Mûsa re şand (me jê re got:) gopalê xwe bavêje! (Vêca dema Mûsa gopalê xwe avêt), darê Mûsa, werîs û darên wan bi yek carê dabelandin. **118-** Vêca rastî derkete holê û karê (sêrbaziya) ku wan kir, pûç bû.**119-** Li wê derê (sêrbaz) şikestin û (Firewn û bereka xwe) rezîl û riswa vegeriyan. **(Aref 117-119)**

[5] **65-** (Sêrbazan Got: Ey Mûsa! (Tu dixwazî pêşî) tu (gopalê xwe) biavêje yan jî em ê pêşî (gopal û werîsên xwe) biavêjin. **66-** (Mûsa ji wan re) Got: Na, hûn pêşî biavêjin. (Vêca wan a bi xwe re di cih de avêt) wê demê werîs û gopalên wan, ji sêrbaziya wan, ji Mûsa re hate xuyakirin mîna ku ew (mar in û li ser zikê xwe) bi rê ve diçin. **67-** Mûsa, ji nişka ve di nava xwe de tirsiya. **68-** Me jê re got: Metirse! Yê ku bi ser bikeve teqez tu yî (ne ew in). **69-** (Ey Mûsa) ya di destê xwe de biavêje da ku ew dar û werîsên wan dabelîne (û sêra wan betal bike). Bi rastî ya ku wan çêkiriye bes hîleya sêrbazan e (û ne rastî ye). Sêrbaz li ku dibe bila bibe bi ser nakeve. **(Ta-Ha 65-69)**

[6] Piştî reva we, Xwedê aramî û dilxweşiya xwe bi ser Pêxember û bawermendan de anî. **(Tewbe 26)**

[7] Êdî Xwedê aramiya xwe bi ser de anî û piştevaniya wî bi leşkerekî kir ku we ew nedidîtin. **(Tewbe 40)**

[8] Vêca Xwedê jî tenahî û aramiya xwe bi ser pêxemberê xwe û mumînan de şand û kelîmeya teqwayê (Kelîma Tewhîdê) li ser wan pêwîst kir. **(Fetih 26)**

[9] Sond be, Xweda ji mumînan razî bûye li wê dema ku wan li binê darê peyman daye te. Vêca bi (rastî û wefadarî) ya ku di dilê wan de heye Xweda zaniye, êdî aramî û tenahî bi ser wan de şand û bi vekirina rêke serkeftineke nêzîk (bi fetha Xeyberê) ew xelat kirin. **(Fetih 18)**

[10] Ew Xwedayê ku aramiyê dixe dilên mumînan da ku îmana wan xurt û zêde bibe. **(Fetih 4)**

[11] “Ez ji Xwedayê mezin, perwerdegarê arşê mezin dixwazim ku te mefadar (şîfa) bike. (7 caran)

[12] Ez te bi bêjeyên Xwedê yên tekûz ji her şeytanî û her heywana jehrdar û ji her çavê xerab didime parastin.” (3 caran)

[13] Xwedayê min! Hey perwerdegarê mirovan, nexweşiyê bibe, şefa bike, şefaker her tu yî, ji şîfaya te pê ve tu şîfa tun in, şifayeke wisa ku nexweşiyê nehêle.

[1] اَللّٰهُمَّ أَذْهِبْ عَنْهُ حَرَّهَا وَبَرْدَهَا وَوَصَبَهَا ۞
[2] حَسْبِيَ اللّٰهُ لَا إِلٰهَ إِلَّا هُوَ عَلَيْهِ تَوَكَّلْتُ وَهُوَ رَبُّ الْعَرْشِ الْعَظِيْمِ ۞
[3] بِسْمِ اللّٰهِ أَرْقِيْكَ مِنْ كُلِّ دَاءٍ يُؤْذِيْكَ وَمِنْ شَرِّ كُلِّ نَفْسٍ أَوْ عَيْنِ حَاسِدٍ، اللّٰهُ يَشْفِيْكَ بِسْمِ اللّٰهِ أَرْقِيْكَ ۞
بِسْمِ اللّٰهِ ۞
[4] أَعُوْذُ بِعِزَّةِ اللّٰهِ وَقُدْرَتِهِ مِنْ شَرِّ مَا أَجِدُ وَأُحَاذِرُ

**Çend agahdarî ne:**

❶ Ew xurefatên ku bi merevê çavpis ve girêdayîne, mîna ku mîza wî vexwin; baweriya bi wan durist nîn e. Dema vê zanibe jî bermayiya wî feydê nade.

❷ Li ser wî cihê ku merev ku ji çavpêvedana wî ditirse durist nîne ku niviştên ji cerm, bazin û gerdeniyan li serê deynin. Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje: ***"Ew kesê ji bo nezerê tiştekî pêve daleqîne dibe spareyê wê"*** (*Tirmizî*). Eger ew tişta pê ve daleqandin ayeteke Qura'anê be; tê duristiya wê de îxtilaf heye û terka wê çêtir e.

❸ Nivisandina "maşaellah" û "tebarekellah" yan wêneyê şûrekî, kêrekê an wêneyê çavekî, yan Qur'anê di maşîneya xwe de deyne yan hin ayetên qur'anê bi mala xwe ve daleqîne, ha ev tev nezerê bipaşde nadin; belkî carinan ew dibin ji niviştên ku heram in.

❹ Xwendina li ser nexweşî wacibe ku merev bawer bike ewê qebûl bibe û merev nebêje ku çima zu şefa nebû. Eger jê re bê gotin: tedawiya bi dermanan ew ê demeke dirêj berdewam be ew navecinîqe, lê belê dema bê gotin tedawiya bi zikr û dua wê dirêj bibe dihilçene, digel ku bi xwendina her herfekê xêrek jê re heye û her xêrek jî bi deh qatê xwe ye. Li ser yê nexweş heye ku dua, îstiğfar û pir serqa bide, lewra ev ji wan tiştan ku şefa bi wan çêdibe.

❺ Li ser nexweşî xwendina bi civakî muxalifê sunetê ye û tesîra wê ze'îf e. Her wisa xwendina bi cihazên elektronîkî tenê jî muxalifê sunetê ye, lewra qesd û niyet tê de tune û niyet jî ji yê ku di xwînere şert e; çendî ku ew bi gohdarikirina wê xwedanxêr jî dibe. Xwendina duayên şefayê heyanî ku şefa bibe dubarekirina wê sunet e, ji bilî ku pir biteibe vêca ewê kêm bike da ku devjêbernede. Heçî ku dubarekirina ayet û dua bi hejmareke mueyyen ne durist e, ji bilî ku delîlek li ser hebe.

❻ Li vir hin nîşan hene ku ne bi Qur'anê; bi sihr û cadutiyê ruqyê dikin. Bila te nexapîne ku ew hinekî ji dîn aşkere dikin; vêca ew ruqya xwe bi xwendina Qur'anê destpêdike, pir naçe, wê diguherînin û dest bi sihrê dikin. Hin ji wan sihirbazan mizgeftan dikin adet da ku mirovan bi ser de bibin. Gelek caran tu dibînê ku ew zikrê xwedê dixweînin, bila ev te nexapîne, vêca agahdarbe!

**Hinek ji nîşanên sihirbazan:** ✷ Pirskirina navê nexweş û navê bavê wî, lewra nasîna nav û nenasîna wî di dermankirinê de tu tesîrê nake. ✷ Daxwazkirina tiştekî ji cil û bergên nexweşî. ✷ Carina ji nexweşî heywaneke di salixên kifşe de

---

[1] Xwedayê min! Germahiya nexweşiyê, sermaya wê û zehmetiya wê ji ser bibe.

[2] "Xwedê besî min e, ji wî pê ve tu mabûdê heq tun in. Min her xwe siparte wî û ew xwediyê arşê mezin e". (7 caran)

[3] Bi navê Xwedê, ji çiqas nexweşiya ku janê dide te, ji xerabiya her merevî û çavê her hesedkerî li ser te dixwînim, Xwedê te şîfa bike. Bi navê Xwedê li ser te dixwînim.

[4] "Ez ji ber nebaşîya vê êşa ku pê dihisim û jê pêxav dikim xwe davême bextê Xwedê û qudreta wî.

tê daxwazkirin da ku ji cinan re serjêke û pir caran xwîna wê di yê nexweş didin. ✷Nivîsandin û xwendina hin tilismên ku nayêne fehmkirin û ji wan re wate tune. ✷Dayîna perekî ji bo nexweşî ku tê de çargoşeyî hene, di nava wan de hin herf û reqem hene ku jê re "El-hicab" tê gotin. ✷Li nexweşî ferman dike ku di odeyeke tarî de xwe ji xelkê bigre, ji vê re "**El-hecebe"** tê gotin. ✷Emrî nexweşî dike ku di mudetekî kifşe de dest nede avê. ✷ Tiştekî bide nexweş da ku di redê de veşêre, yan jî perekî bişewitênê û wî pê dûbide. ✷ Ji yê nexweş re hin hususiyatên ku ji wî pê ve kes pê nizane, yan jî navê wî, navê bajarê wî û navê nexweşiya wî, beriya nexweş bibêje ku ew jê re bêje. ✷ Tenê bi hatina nwxweşî teşxîskirina rewşa nexweşî, yan bi telefonê yan jî bi namê.

7 Di bîr û baweriya ehlê sunetê de cin dikare bikeve nava bedena mirovî de. Delîla li ser vê ev e: "***Ew ên ku ribayê (selefê) dixwin, eynî mîna wan ên ku ji lêdana şeytên dîn bûbin (roja qiyametê ji tirbên xwe) radibin.***" **(Beqere 275)** Tefsîrzanan gotina xwe kirine yek ku di ayetê de mebest bi "mess"ê ev e; ew dinîtiya şeytanî ya ku li mirovî peyde dibe bi sedema ku şeytan dikeve bedena wî de.

**Dawîneyek:** Sihir (caduyî) heye. Tesîra wê bi qur'an û sunetê sabit e. Sihir heram e û gunehê wê mezin e, bi nîşana fermodeya Pêxember (Selat û selam li ser bin); "xwe ji heft gunehên mezin ên helakker. Gotin: Ey Resûlê Xwedê, ew çine? Pêxember got: "***Ji Xwedê re havtaçêkirin e û sihirbendî ye.***" *(Muttefequn eleyh)* û bi nişana fermana Xwedê; "***Bi rastî wan zanîbû ku kesê (bi ayetên Xweda) sêrbazî kirî di axretê de jê re tu par nîn e.***" **(Beqere 102)**

**Sihir li ser di beşan e: 1-** Hin girêk û xwendinin, bi wan sihirbend digihije bikaranîna şeytanan di wan tiştên ku pê xerabiya yê sêhrlêkirî dixwaze. **2-** Hin derman in, li ser bedena merevê sêrlêbûyî tesîrê dike û li ser aql û îrade û meyla wî. Jê re "**serf û atif**" tê gotin. Vêca ji merevê sêrlêbûyî jê re tê xeyalkirin ku ev tişt berevajî bûye, ev lebitiye, ev birêve çûye û yê mîna van. Ya ewil, bikaranîna wê şirk e, bi sedema ku heyanî ew Xwedê înkar neke şeytan jê re naxebitin. Heçî ya diduyê ye, ew xeternake û gunehê wê ji kebairan e. Ev hemî jî bi qedera Xwedê têne meydanê.

# DUA (DAXWAZÎ)

Mexlûq (afirinde) hemû hewcedarê bal Xwedê ve ne û mihtacê ya li cem wî ne. Xwedê dewlemend e; ne mihtacê wan e. Xwedê li ser bendeye xwe dua (daxwaza jê) pêwist kiriye. Xwedê li ser vê yekê ferman dike: '***Hûn hêvî û dua ji min bikin, ez ê jî bersiva we bidim. Bêguman ew ên ku li ser daxwaziya ji min xwe mezin didêrin (ku dua nakin), dê rezîl biçin dojehê***.' Pêxeber (Selat û selam li ser bin) dibêje: ***Ew kesê ji Xwedê daxwazê neke Xwedê jê hêrsdibe.***" *(Ibn Maceh)* Digel vê yekê Xwedê bi daxwaziya bendeyê xwe kêfxweş dibe, ji yê ku li rijd e hezdike û wan nêzî xwe dike.

Birastî jî sehabiyên Pêxember ev rewş fehmkiribûn, vêca wan daxwaza ji Xwedê ji bo xwe tu kêmasî nedidîtin û hewceyiyên xwe ne davêtin ser kesî ji mexlûqê wî. Ev rewşa wan jî, bi sedem ku pêwendiya wan bi Xwedayê wan heye û ku ew xwe nêzîkî Xwedê dikin û Xwedê jî nêzîkî wan e, tenê pêkanîna gotina Xwedê; ***"Dema bendeyê min pirsa min ji te bike, (jê re bibêje:) Birastî ez nêzîkî wî me.***" Li cem Xwedê ji duayê re cihekî mezin heye. Duaya ji Xwedê îkrama herî birûmet e ji bo Xwedê. Carinan jî berê qezayê dagerîne. Çiqas kesê ku ji Xwedê dua bike, Xwedê jê qebul dike bi egera ku sebêbên qebulkirinê mewcûdbin û rêgirtek jî tunebin. Xwedê, yekê ji van rewşan didiyê, ew ên ku Pêxember di vê fermodeya xwe de gotiya: "Çi musilmanekî ku tiştekî ji Xwedê bixwaze ku di daxwaza wî de gunehkarî, qutkirina eleqeya xweditiyê nebin; Xwedê yekê ji van hersiyan dê bidiyê: yan Xwedê duaya wî zû qebuldike, yan jê re dihilîne axretê, yan jî bi qasî wê xerabiyê ji ser dide alî. Sehabiyan got: Wê çaxê emê dua pir bikin. Pêxember got: "***Xwedê pirtir dide***." *(Ahmed)*

**Beeşên duakirinê (daxwazkirinê):** Beşên wê dido (2) ne:

**1-** Duaya ku îbadet e, mîna nimêj û rojiyê. **2-** Duaya ku xwestina tiştekî ye.

**Jihevçêtiriya îbadetê:** Ma gelo; xwendina Quranê xêrtir e yan zikir yan jî dua û daxwazkirin?

Xwendina Qur'anê bê qeyd û şert xêrtir e, paşê zikr û pesindayîna Xwedê û paşê dua û daxwazî ye. Ev ji heyset îcmal ve wisa ye. Lê belê carina tiştin li ser yê kêmxêr peyda dibe, vêcarê ji yê pirxêr bixêrtir dibe. Mînak; duaya roja erefê ji xwendina Qur'anê bixêrtir e û dua û zikrên ku di pey nimêjên ferz de tên xwendin ji xwendina Qur'anê feziletir e.

**Sedemên qebulkirina duayan:** Li ser vê rewşê hin sedemên aşkere û hin jî yên derûnî hene.

**1- Sedemên aşkere:** Beriya duakirinê merev emelê qenc bike; mîna serqedanê, dessmêjgirtin û nimêjkirinê, di duayê de berê xwe bide qıblê, herdu destên xwe ber bi Xwedê ve rake, bi salixên ku bebetî Xwedê ne salixê wî bide, merev nav û sifatên Xwedê bi ya ku munasibî ya merev dixwaze bikarbîne; dema daxwazî telbekirina cennetê be, ew ê bi salixê fezîlet û rehmetê dua bike, eger ku merev li zalimekî nifiran bike wê çaxê navê Rehman û Kerîm nayê bikaranîn; ancex navê Cebbar û Qehhar têne bikaranîn. Ji sedemên aşkerene; di serê duayê, nivê duayê û dawiya duayê de dayîna selewatan li ser Pêxember e, merev li gunehê xwe mukir were, şukrê nîmetên Xwedê bike û merev wextên bixêr bikarbîne, ew ên ku qebulbûna dua di wan de têgumankirin. Ew jî pir in. ji wan in;

**Di şev û rojê de:** Sêyeka şevê ya dawî ye ku wê demê Xwedê xwe diberde asîmanê dinyayê, di navbera azan û qametê de, piştî destmêjgirtinê, di sicûdê de,

beriya silavdayîna ji nimêjê, di piştî nimêjan de, li cem xetimkirina Qur'anê, dema dîk bangdidin, di seferê de, nifêrên mezlûman, duaya hewcedaran, duaya bav ji zaroyan re, duaya musilmanî ji birayê wî yê musilman re di pişt wî de û di herbê dedema ku neyer tê hemberî wî. **Di hefteyê de:** Roya Înê û nemaze di dawîya saeta wê de. **Di mehê de:** Meha Remezanê li cem fitarî û sehurê de, Şeve leylet,ul-qedrê û roja erefê. **Di cihên mezin û pîroz de:** Di tevekê mizgeftan de, li cem beytê; nemaze li multezemê, li meqamê Îbrahîm, di ser Sefa û Merwayê re, di royên heccê de li Erefatê, li Muzdelifê, li minayê û dema ava zemzem vexwe û xeynî van jî...

**2- Sedemên derûnî (yên penhan): Beriya duayê:** pêşî tobeyeke rasteqîne bike, melekî bi zilmê li cem hebe li xwediyê wî vegerîne, pêwist e ku xwarina wî, vexwarina wî, cil û cihê wî ji keda helal bin, îbadetê pir bike, ji heramiyan xwe dûrbigre û ji tiştê bi şubhe û ji dilxweziyan xwe paqij bike.

**Di nav duan de:** Lazim e ku dilê xwe li ser rawestîne, êminiya xwe bi Xwedê bîne, zêde rica bike, bi bal Xwedê ve pir lûbelûb û zarazar bike, rewşa xwe pispêriyê û berê xwe ji xeynê wî qut bike û bawer bike ku Xwedê duayên wî qubûl dike.

**Sedemên ku nahêlin dua qebûl bibe:** Mirov carinan dua dike lê belê dua wî qebûl nabe yan jî qebûla wê têpaşdexistin. Sedem pirin, ji wan sedeman;
✴Digel Xwedê, ji xeynê wî re jî ku dua bike. ✴ Bi berferehî dua bike, mîna ku bibêeje: Xwedêyo! Min ji germa agirê cehnemê, ji tengasiya wê, ji tarîtiya wê biparêze û herwiha.. digel ku parêziya ji êgir tenê kafî ye. ✴ Mirovê musilman ku bi sitemkarî nifiran li xwe û xeynê xwe bike. ✴ Bi gunehkariyê û bi qutkirina benê xweditiyê dua bike. ✴ Qebulkirina duaya xwe bi daxwaziya Xwedê ve girêbide. Mîna ku bibêje: Xwedayêmin! Eger tu bixwazê min bibexşîne û mîna wê.. ✴Li qebulkirina duayê ecele bike, weke ku bibêje: Min dua xwest lêbelê qebul nebû. ✴Di duayê de bêzar bibe û bikerixe vêca terka wê bike. ✴ Duakirina ji dilekî xafil û bêhay. ✴ Di huzûra Xwedê de ku bêedeb û bêtore bê. Carekê Pêxember dengê merivekî kir ku di nimêja xwe de dua dike û selewatan li ser Pêxember nade, Pêxember got: Vî merevî ecele kir. Pêxember gazî kir û jê re yan ji yekî din re got: "***Dema yekî ji we dua kir; bi hemdê û salixên Xwedê destpê bikin, paşê li ser Pêxemberê wî selewatan bidin û paşê hun çawa dixwazin wisa dua bikin.***" *(Tirmizî)* ✴Daxwaza tiştekî bike ku ew ne mimkun e. Mîna ku bibêje: Ya Rebbî, di dinyayê de min nemirêne; her ebedî bihêele. ✴ Di duayê de xwe bide zehmetiyê, yanî duayê bi wezn û qafiye bixwênê. Xweda ferman dike: **Ji Xwedayê xwe bi zarazar û nehênî dua bikin, birastî ew ji sînorbuhêran heznake**. Ibn Ebbas dibêje: Di duayê de hey ji sec'ê hebin û xwe jê bigrin. Min û sehabeyên Pêxember pê re soz da ku em duaya bi wezn û qafiye nexwênin. **(Buxarî)** ✴**Di duayê de dengbilindiya zêde:** Xwedê ferman dike: "***Di nimêj û duayên xwe de dengê xwe zêde meke û neveşêre jî; di navbera herdukan de rêyekê ji xwe re bigre.***" Aîşe (*Xwedê jê razî be*) dibêje: Ev ayet derbarî duayê de nazil bûye.

**Ew kesê ku dua dike musteheb e û li gorî rêza têyî be: Yekem:** yê bi hemd û senaya Xweda destpê bike. **Duyem**: Li ser Pêxember dê selewatan bide. **Sêyem**: Ew ê tobe bike û li gunehên xwe mukir were. **Çarem**: Ew ê şukrê nîmetên Xwedê bike. **Pêncem**: Yê dest bi duayê bike û wê li ser duayên giştegîr rijd be û li ser yên ku ji Pêxember û selefan waridbûne jî. **Şeşem**: Ewê duaya xwe bi selewata li ser Pêxember bidawî bike.

## Çend duayên giring in ku jiberkirin û duakirina bi wan pêdivî ye

| Cih û wextê duayê | Duayên ku Pêxember xwendine |
|---|---|
| **Berî razanê û piştî razanê** | **Wate:** بِاسْمِكَ اللَّهُمَّ أَمُوتُ وَأَحْيَا Xwedêyo! "Her bi navête, ez dijîm û dimrim."<br>**Dema şiyarbû:** اَلْحَمْدُ لِلّٰهِ الَّذِى أَحْيَانَا بَعْدَ مَا أَمَاتَنَا وَ إِلَيْهِ النُّشُورُ "Pesn ji bo Xwedê bin, ewê ku di piştî me di xewre biribû em şiyar kirin û ve ger her li bal wî ye." |
| **Yê ku di xew de bitirse** | "أَعُوذُ بِكَلِمَاتِ اللهِ التَّامَّاتِ مِنْ غَضَبِهِ وَعِقَابِهِ وَشَرِّ عِبَادِهِ، وَ مِنْ هَمَزَاتِ الشَّيَاطِينِ وَ أَنْ يَحْضُرُونِ"<br>"Ez xwe bi bêjeyên Xwedê yên tekûz, ji hêrsa wî û cezakirina wi û ji xerabîya qûlên wi û ji tasawasa şeytanan di parêzim û ku ew (şeytan) nêzîkê min nebin, xwe diparêzim." |
| **Dema xewnê bibîne** | Dema yekî ji we xewneke jê hezdike bibîne, vêca ew ji Xwedê ye; bila li ser dîtina wê hemdê Xwedê bike û wê ji zanan bipirse. Eger ew tiştekî ku bidilê wî be bibîne, vêca ew ji şeytên e; bila ji xerabiya wê bi Xwedê xwe biparêzê û bila wê ji tu kesî re nebêje. |
| **Dema ji mal derkeve** | "اَللَّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ أَنْ أَضِلَّ، أَوْ أُضَلَّ، أَوْ أَزِلَّ، أَوْ أُزَلَّ، أَوْ أَظْلِمَ، أَوْ أُظْلَمَ، أَوْ أَجْهَلَ، أَوْ يُجْهَلَ عَلَيَّ"<br>Xwedêyo! Birastî ez xwe davême bextê te da ku ji rê nekevim û ji rê neême xistin û neşemitim û neême şemitandin, sitemkarî nekim û sitem li min neête kirin, nezanînê nekim û nezanîn li hember min neête kirin. |
| **Dema kete mizgeftê** | "أَعُوذُ بِاللهِ الْعَظِيمِ، وَبِوَجْهِهِ الْكَرِيمِ، وَسُلْطَانِهِ الْقَدِيمِ، مِنَ الشَّيْطَانِ الرَّجِيمِ"<br>"بِسْمِ اللهِ، وَالصَّلاَةُ وَالسَّلاَمُ عَلَى رَسُولِ اللهِ اَللَّهُمَّ افْتَحْ لِي أَبْوَابَ رَحْمَتِكَ"<br>"Ez xwe bi xwedayê mezin bi zatê wî yê comerd, bi desthilatdarîya wî ya ji berêdeheyî, ji şeytanê qeşitandî di parêzim. Bi navê Xwedê, selat û selam li ser Qasidê Xwedê bin. Xwedêyo! Dergahên dilowanîya xwe ji min re veke" |
| **Dema ji mizgeftê derkeve** | "بِسْمِ اللهِ وَالصَّلاَةُ وَالسَّلاَمُ عَلَى رَسُولِ اللهِ، اَللَّهُمَّ إِنِّي أَسْأَلُكَ مِنْ فَضْلِكَ، اَللَّهُمَّ اعْصِمْنِي مِنَ الشَّيْطَانِ الرَّجِيمِ"<br>"Binavê Xwedê, selat û selam li ser Qasidê Xwedê bin. Xwedayê min! Birastî ez ji pirdayîna te ji te di xwazim. Xwedayê min! Tu min ji şeytanê Qeşitandî bi parêze" |
| **Yê ku nû dizewice** | "بَارَكَ اللهُ لَكَ، وَبَارَكَ عَلَيْكَ، وَجَمَعَ بَيْنَكُمَا فِي خَيْرٍ" "Xwedê (bermaliya te) ji te re bi xêrûbêr bike û te ji bi xêrûbêr bike û we herduyan bi xweşî bihevre bihêle." |
| **Kesê dengê azana dîkan û zirêna kerê bike** | Xwendê me qasidê Xwedê (Selat û selam li ser bin) gotiye: Deme we bangdayina dik sehkir ji Xwedê Te'ala qencîyê bixwazin. Çimkî wê gavê dîk melaîket dîtîye. Dema we zirîna kerê seh kir xwe ji şerê şeytên bavêjin ber penaha Xwedê; bibêjin: أَعُوذُ بِاللهِ مِنَ الشَّيْطَانِ الرَّجِيمِ Ez ji ber şeytanê qewirandî xwe davême ber bextê Xwedê. Lewra; kerê wê gavê şeytan dîtiye." |
| **Ew kesê bêje: ji bo Xwedê ez ji te hezdikim** | "أَحَبَّكَ الَّذِي أَحْبَبْتَنِي لَهُ"<br>Ew zatê ku te ji bona wi ji min hezkirîye, ji te hez bike. |
| **Dema birayê te yê musilman bipişike** | Dema yek ji we bipişike bera bibê: اَلْحَمْدُ لِلّٰهِ Pesn ji Xwedê re bin. Dema dengê wi çû hevalekî, bera ew (heval) jê re bibê: "يَرْحَمُكَ اللهُ" "Xwedê dilovanîya xwe li te ke. Vêca bera ew ji hevalê xwe re bibê: "يَهْدِيكُمُ اللهُ وَيُصْلِحُ بَالَكُمْ" Xwedê we bîne ser riya rast û rewşa we sererast bike. |
| **Duaya kul û kevanan** | "لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ الْعَظِيمُ الْحَلِيمُ، لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ رَبُّ الْعَرْشِ الْعَظِيمِ، لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ رَبُّ السَّمَاوَاتِ وَرَبُّ الْعَرْشِ الْكَرِيمِ" "اَللهُ اللهُ رَبِّي لاَ أُشْرِكُ بِهِ شَيْئاً"<br>Ji Xwedayê mezin û yê berbihêr pê ve tu mabûdê heq tun in. Ji Xwedê; perwerdegarê erşê mezin pê ve tu mabûd tun in. Ji Xwedê; perwerdegarê asîmanan, perwedegarê zemînê û perwerdegarê arşê pîroz pê ve tu mabûd tun in. Xwedê perwerdegarê mine; ez tu tiştî jê re naxime hevpişk. |
| **Nifira li ser neyaran** | "اَللَّهُمَّ مُنْزِلَ الْكِتَابِ، سَرِيعَ الْحِسَابِ، إِهْزِمِ الْأَحْزَابَ، اَللَّهُمَّ اهْزِمْهُمْ وَزَلْزِلْهُمْ"<br>Xwedaya! Hey zatê ku wehyê nazil dike û hesêbdîtina wî bileze! Zora birê dijminan bibe. Xwedêyo! Zora wan bibe û wan bilerzîne." |

**Şiyarbûna ji xewa şevê**

لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ وَحْدَهُ لاَشَرِيكَ لَهُ، لَهُ الْمُلْكُ وَلَهُ الحَمْدُ، وَ هُوَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ سُبْحَانَ اللهِ، وَالحَمْدُ لِلّٰهِ، وَلاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ، وَاللهُ أَكْبَرُ، وَلاَحَوْلَ وَلاَ قُوَّةَ إِلاَّ بِاللهِ الْعَلِيِّ الْعَظِيمِ، رَبِّ اغْفِرْ لِي

Ji Xwedê pê ve tu mabûd tun in, bitenê ye, tu hevpar jê re tun in, Xwedanî, her jê re ye, pesn jî her jê re be û ew ji her tiştî re kare ye. Em Xwedê pak didêrin. Pesn ji Xwedê re bin. Ji Xwedê pêştir tu mabûd tun in. Xwedê herî mezine. Tu dagerîna ji gunahan û tu hêza (quweta) li ser qenciyê nîne ku ne Xwedayê bilind û mezin be. Perwerdagarê min! Min bibağişîne! Yan jî ew û dua bike, duaya wî qebûl dibe. Eger desmêj bigre û nimêjke; nimêja wî qebûl dibe.

**Dema rewşek ji merev re giran were**

"اَللّٰهُمَّ لاَ سَهْلَ إِلاَّ مَا جَعَلْتَهُ سَهْلاً وَأَنْتَ تَجْعَلُ الحُزْنَ إِذَا شِئْتَ سَهْلاً"

Xwedêyo! Ji ya ku te hesanî kirîye pêve tu tişta hesanî tune û dema tu bivê tişta zor jî hesanî dikî.

**Duaya deyndayi nê**

"اَللّٰهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنَ الْهَمِّ وَالحَزَنِ، وَالْعَجْزِ وَالْكَسَلِ، وَالْبُخْلِ وَالجُبْنِ، وَضَلَعِ الدَّيْنِ وَغَلَبَةِ الرِّجَالِ"

Xwedêyo! Ez ji ber derd û şînê, bêçarebûn û tralîyê, cekûsî û bêziravîyê û ji piştxwarîya deyndarîyê û ji qalsbûna li hember mêran xwe davême bextê te.

**Çûna avrêj û avşokê**

"( بِسْمِ اللهِ) اَللّٰهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنَ الخُبُثِ وَالخَبَائِثِ"

Bi navê Xwedê. Xwedayê min ! Birastî ez ji ber xerabîye şeytanên nêr û mê xwe davême ber penaha te."

**Tasawasa di nav nimêjê de**

Ew şeytana jê re xenxeb dibêjin. Dema te pêjna wî kir; xwe bi Xwedê jê biparêze û sê caran tifke milê xwe yê çepê.

**Duaya di secdê de**

اَللّٰهُمَّ اغْفِرْ لِي ذَنْبِي كُلَّهُ، دِقَّهُ وَجِلَّهُ، وَأَوَّلَهُ وَآخِرَهُ وَعَلانِيَتَهُ وَسِرَّهُ" سُبْحَانَكَ اللّٰهُمَّ رَبَّنَا وَبِحَمْدِكَ اللّٰهُمَّ اغْفِرْ لِي اللّٰهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِرِضَاكَ مِنْ سَخَطِكَ، وَ بِمُعَافَاتِكَ مِنْ عُقُوبَتِكَ وَ أَعُوذُ بِكَ مِنْكَ لاَ أُحْصِي ثَنَاءً عَلَيْكَ أَنْتَ كَمَا أَثْنَيْتَ عَلَى نَفْسِكَ

Xwedêyo! Tu gunahê min tevdê wî, hûrê wî û girê wî, pêşiyê wî û dawiyê wî, haşîkarê wî û veşirtiyê wî ji min re bi bağişîne. Ez te, tevli pesindana te, pak didêrim Xwedêyo! (hey) Perwerdegerê me! Xwedêyo ! Min bibaxşîne. Xwedêyo! Birastî ez bi qayilbuna te ji hêrsa te û bi rehetkirina te ji cezakirina te xwe di parêzim. Ez xwe bi te, ji te di parêzim. Çawa ku te pesnê zatê xwe daye ez nikarim wisa pesnê te bijimêrim.

**Duaya secda tilawetê (xwendina Que'anê)**

اللّٰهُمَّ لَكَ سَجَدْتُ وَ بِكَ آمَنْتُ، وَ لَكَ أَسْلَمْتُ، سَجَدَ وَ جْهِيَ لِلّذِي خَلَقَهُ، وَ صَوَّرَهُ، وَشَقَّ سَمْعَهُ وَبَصَرَهُ، تَبَارَكَ اللهُ أَحْسَنُ الْخَالِقِينَ"

Xwedayê min! Min her ji te re ser danîye û min bes bi te bawerî anî û her ez ji te re berdest bûm. Ruyê min ji bona yê ku wî aferandiye û wî bi temtêl kirîye û guhê wî û çavê wî vekiriye, ser daniye. Pîroz be Ellah Te'ala ku rindtirînê çêkera ye .

**Duaya destpêka nimêjê**

"اَللّٰهُمَّ بَاعِدْ بَيْنِي وَبَيْنَ خَطَايَايَ كَمَا بَاعَدْتَ بَيْنَ الْمَشْرِقِ وَالْمَغْرِبِ، اَللّٰهُمَّ نَقِّنِي مِنْ خَطَايَايَ كَمَا يُنَقَّى الثَّوْبُ الأَبْيَضُ مِنَ الدَّنَسِ، اَللّٰهُمَّ اغْسِلْنِي مِنْ خَطَايَايَ بِالثَّلْجِ وَالْمَاءِ وَالْبَرَدِ"

Xwedayê min! Tu navbera min û gunahên min ji hev dur bike çawa ku te navbera rohilat û roava dur kirîye. Xwedayê min! Tu min ji gunehê min paqij bike, çawa ku cila sipî ji qerêjê tête paqijkirin. Xwedêyo! Tu min ji gunehên min bi berfê, bi avê û bi teyrokê bişo.

**Di dawîya nimêjê de**

اَللّٰهُمَّ إِنِّي ظَلَمْتُ نَفْسِي ظُلْماً كَثِيراً، وَلاَ يَغْفِرُ الذُّنُوبَ إِلاَّ أَنْتَ فَاغْفِرْ لِي مَغْفِرَةً مِنْ عِنْدِكَ وَ ارْحَمْنِي إِنَّكَ أَنْتَ الْغَفُورُ الرَّحِيمُ"

Xwedêyo! Birastî min bi sitemkarîyeke mezin neheqî li xwe kirîye. Ji te pê ve (tu kes) gunahan na bağişîne. Îdî bi bağişandineke ji nik xwe min bibağişîne û li min dilovanî bike. Hemin tu; her bi xwe gunahbexşî, dilovanî.

**Di piştî nimêjê de beriya silavê**

اَللّٰهُمَّ أَعِنِّي عَلَى ذِكْرِكَ، وَشُكْرِكَ وَحُسْنِ عِبَادَتِكَ"

"اَللّٰهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنَ الْبُخْلِ، وَالكفر وَ عَذَابِ الْقَبْرِ"

Xwedayê min! Ji bo ku ez zikrê te bikim û şûkrê te bikim û îbadetê te bi rindî bikim arîkariya min bike. Xwedaya! Birastî ji ber çekusiyê ez xwe bi te di parêzim û ji ber kufr û azara gorê xwe davême bextê te.

**Ew kesê tiştekî qenc bike**

Ew kesê qenciyek lê bêtekirin, vêca bibêje: "جَزَاكَ اللهُ خَيْراً" Xwedê te bi qenciyê xelatdar bike, birastî wî salixê wî başdaye. Ew ê din wê wisa lê vegerîne; وجَزَاكَ اوَ ايَاكَ Xwedê te jî padaşt bike.

**Dema baran dît**

"اَللّٰهُمَّ صَيِّباً نَافِعاً" Xwedêyo! Bera baraneke bi havil be. Di caran yan sê caran dê bêje. "مُطِرْنَا بِفَضْلِ اللهِ وَرَحْمَتِهِ" Em bi pir comerdîya Xwedê û dilovaniya wî hatina avdan. Paşê ew ê dua bike. Dua di wê dema hatina baranê de qebûl dibe.

**Dema ba rabe**

"اَللّٰهُمَّ إِنِّي أَسْأَلُكَ خَيْرَهَا، وَخَيْرَ مَا فِيهَا، وَخَيْرَ مَا أُرْسِلَتْ بِهِ وَأَعُوذُ بِكَ مِنْ شَرِّهَا، وَشَرِّ مَا فِيهَا وَشَرِّ مَا أُرْسِلَتْ بِهِ"
Xwedêyo! Ez rindiya wî û rindiya tê de û rindîya tişta ku ji bonê hatiye gurkirin ji te dixwazim. Ez ji nebaşiya wî û nebaşiya tê de û nebaşîya tişta ku ji bonê hatîye gurkirin xwe davême bextê te.

**Dema heyva yekşevî dît**

"رَبُّنَا وَ رَبُّكَ اللهُ اَللهُ أَكْبَرُ، اَللّٰهُمَّ أَهِلَّهُ عَلَيْنَا بِالْأَمْنِ وَ الْإِيمَانِ، وَ السَّلَامَةِ وَ الْإِسْلَامِ،" Xwedê herî mezin e. Xwedêyo! Tu hîvê bi ewlebûn, iman, aşîtî û musilmanî bi ser me de bîne û tu bike ku em ya tu jê hezdikî û bi te xweş e pêkbinin, hey perwerdegarê me! (Hey hivê) perwerdegarê me û perwerdegarê te Xwedê ye.

**Kesê musafirî verêke**

Xwediyê malê ji musafir dê bibêje: "أَسْتَوْدِعُ اللهَ دِينَكَ، وَأَمَانَتَكَ، وَخَوَاتِيمَ عَمَلِكَ"
Ez dînê te û tişta di bin destê te de û dawîya her karê te, di şipêrme Xwedê. Musafir di bersiva wî de dê bibêje: أَسْتَوْدِعُكُمُ اللهَ الَّذِي لاَ تَضِيعُ وَدَائِعُهُ
Ez we disipêrime Xwedê Te'ala ew ê ku siparekên wî winda nabin.

**Dema te tiştekî ku tu jê hezkê yan jê hezneke bibîne**

Dema Resulê xwedê (s.a.v) rastî tiştekî ku pê xweş dihat, bihate. Digot: "اَلْحَمْدُ لِلّٰهِ الَّذِي بِنِعْمَتِهِ تَتِمُّ الصَّالِحَاتُ" "Hemu pesn ji Ellah Te'ala re bin yê ku her bi qencîkarîya wî tiştên bihavil pêk tên» Deme tiştekî pê xweş nehata bidîta, di got: "اَلْحَمْدُ لِلّٰهِ عَلَى كُلِّ حَالٍ" "Di her rewşê de pesin ji Xwedê re bin.

**Duaya seferê**

"اَللهُ أَكْبَرُ، اَللهُ أَكْبَرُ، اَللهُ أَكْبَرُ سُبْحَانَ الَّذِي سَخَّرَ لَنَا هَذَا وَمَا كُنَّا لَهُ مُقْرِنِينَ * وَإِنَّا إِلَى رَبِّنَا لَمُنْقَلِبُونَ اَللّٰهُمَّ إِنَّا نَسْأَلُكَ فِي سَفَرِنَا هَذَا الْبِرَّ وَالتَّقْوَى، وَمِنَ الْعَمَلِ مَا تَرْضَى، اَللّٰهُمَّ هَوِّنْ عَلَيْنَا سَفَرَنَا هَذَا وَاطْوِ عَنَّا بُعْدَهُ، اَللّٰهُمَّ أَنْتَ الصَّاحِبُ فِي السَّفَرِ، وَالْخَلِيفَةُ فِي الْأَهْلِ، اَللّٰهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنْ وَعْثَاءِ السَّفَرِ، وَكَآبَةِ الْمَنْظَرِ، وَسُوءِ الْمُنْقَلَبِ فِي الْمَالِ وَالْأَهْلِ"
Xwedê heri mezine. Xwedê heri mezine. Xwedê heri mezine. Binavê Xwedê Te'ala, Hemi pesn ji bona Xwedê bin. Em wî zatê ku eva ha ji me re bin emr kirîye pak didêrin. Eger ku wi binemir ne kira, me nikar bû binemir bikin. Birastî jî em ê vegerine bi bal perwerdegarê xwe ve. Xwedêyo! Birastî em di vê rewitiya (sefer) xwe ya ha de rindî û xweparêzî (teqwa)yê û ji nav karan ji karê bi te xweş, ji te dixwazim. Xwedêyo! Vê rewitiya me li me asan bike û durayîya wê ji me re nêzîk bike. Xwedêyo! Hevalê me di seferê de û karsiparê me dinav malbatê de her tu yî. Xwedêyo! Birastî em ji ber zehmetiya rêwitiyê û murûzbûna temtêlê û ji wergerîna xerab di mal û malbatê de xwe davême bextê te. Dema tu ji seferê vegerê ji; tê dîse vê duayê bixwine û vê jî lê zêde bike :"آيِبُونَ تَائِبُونَ، عَابِدُونَ، لِرَبِّنَا حَامِدُونَ"(Em) vedigerin, tobedarin, îbadetkarin û ji bona perwerdegarê xwe re pesindarin.

**Piştî Nimêjê**

اَللّٰهُمَّ اجْعَلْ فِي قَلْبِي نُوراً، وَفِي لِسَانِي نُوراً، وَفِي سَمْعِي نُوراً، وَفِي بَصَرِي نُوراً، وَمِنْ فَوْقِي نُوراً، وَمِنْ تَحْتِي نُوراً، وَعَنْ يَمِينِي نُوراً، وَعَنْ شِمَالِي نُوراً، وَمِنْ أَمَامِي نُوراً، وَمِنْ خَلْفِي نُوراً، وَاجْعَلْ فِي نَفْسِي نُوراً، وَأَعْظِمْ لِي نُوراً، وَعَظِّمْ لِي نُوراً، وَاجْعَلْ لِي نُوراً، وَاجْعَلْنِي نُوراً، اَللّٰهُمَّ أَعْطِنِي نُوراً، وَاجْعَلْ فِي عَصَبِي نُوراً، وَفِي لَحْمِي نُوراً، وَفِي دَمِي نُوراً، وَفِي شَعْرِي نُوراً، وَفِي بَشَرِي نُوراً" "اَللّٰهُمَّ اجْعَلْ لِي نُوراً فِي قَبْرِي وَنُوراً فِي عِظَامِي" "وَزِدْنِي نُوراً، وَزِدْنِي نُوراً، وَزِدْنِي نُوراً وَهَبْ لِي نُوراً عَلَى نُورٍ"
Xwedêyo! Ronahîyê bêxe dilê mide û ronahîyê bêxe zimanê min û ronayîyê têxe guhê min û ronahîyê têxe çavê min û ronahîyê têxe raserî min û ronahîyê têxe binê min û ronahîyê têxe rastê min û ronahîyê têxe çepê min û ronahîyê têxe pêşîya min û ronahîyê têxe paş min û tu ronahîyê têxe ca nê min û tu ronahîyê ji min re mezin bike û ronahîyê ji min re bi kar bîne û tu min bixe rohnayî. Xwedêyo! Ronahîyê bide min û nurê têxe damarê min û nurê têxe goştê min û ronahîyê têxe xwina min û ronahîyê têxe mûyê min û ronahîyê têxe çermê min. Xwedêyo! Tu ronahîyê têxe gora min û ronahîyê têxe hestiyên min û ronahîyê ji min re pirr bike, ronahîyê ji min re pirr bik e, ronahîyê ji min re pirr bik e. Ronahîyê li ser ronahîyê bide min.

**L,cem razanê**

اَللَّهُمَّ أَسْلَمْتُ نَفْسِي إِلَيْكَ، وَفَوَّضْتُ أَمْرِي إِلَيْكَ وَوَجَّهْتُ وَجْهِي إِلَيْكَ وَأَلْجَأْتُ ظَهْرِي إِلَيْكَ، رَغْبَةً وَرَهْبَةً إِلَيْكَ لاَ مَلْجَأَ وَلاَ مَنْجَا مِنْكَ إِلاَّ إِلَيْكَ، آمَنْتُ بِكِتَابِكَ الَّذِي أَنْزَلْتَ وَبِنَبِيِّكَ الَّذِي أَرْسَلْتَ" اَلْحَمْدُ لِلّٰهِ الَّذِي أَطْعَمَنَا وَسَقَانَا، وَكَفَانَا، وَآوَانَا، فَكَمْ مِمَّنْ لاَ كَافِيَ لَهُ وَلاَ مُؤْوِيَ" اَللَّهُمَّ قِنِي عَذَابَكَ يَوْمَ تَبْعَثُ عِبَادَكَ" بِاسْمِكَ رَبِّي وَضَعْتُ جَنْبِي، وَبِكَ أَرْفَعُهُ، فَإِنْ أَمْسَكْتَ نَفْسِي فَارْحَمْهَا، وَإِنْ أَرْسَلْتَهَا فَاحْفَظْهَا، بِمَا تَحْفَظُ بِهِ عِبَادَكَ الصَّالِحِينَ"

Xwedêyo! Ji bo ku dilê min dibijê te û ez ji te di tirsim, min xwe ji te re berdest kirîye û min her tiştê xwe hewaleyê te kirîye û min bi temamî berê xwe daye te û min pala xwe daye te.Tu cih nîne ku merev ji ber te xwe bavêjîyê û tu cih nîne ku merev ji ber te pêde xelas bibe; ancex li cem te heye. Min bi wê kitaba ku te şandiye û bi wî pêxemberê ku te şandiye bawerî aniye. Hemu pesin ji bona Xwedê bin, ew ê ku em bixwarin û vexwarin kirine û besî me bûye û em hawandine. Vêce çiqa kesê bêparêzvan û çiqa kesê bêmazulvan hene. Xwedêyo! Tu min roja ku tu qûlên xwe rake qiyametê ji azara xwe bi parêze.” (*Sê care bixwînê)*. Her bi navê te Rebbê min! Ez her bi te li ser tenişta xwe di razim û her bi te ez ji xew radibim. Îdî; eger tu canê min bistînî vêce dilovanîyê lê bike û eger; tu wî sax bihêlî îce wî biparêze çawa ku tu bendeyên xwe yên bihavil diparêzî”

“Ew ê pifkê destê xwe û feleq û nas bixwênê û yê bedena xwe bi kefa destê xwe vemalê. Ew heyanî ku sûreyê Tebârekê (Mülk) û sûreyê Secdê nexwîne ranezê.

**Duata Îstîxarê**

(اَللَّهُمَّ إِنِّي أَسْتَخِيرُكَ بِعِلْمِكَ، وَأَسْتَقْدِرُكَ بِقُدْرَتِكَ، وَأَسْأَلُكَ مِنْ فَضْلِكَ الْعَظِيمِ، فَإِنَّكَ تَقْدِرُ وَلاَ أَقْدِرُ، وَتَعْلَمُ وَلاَ أَعْلَمُ، وَأَنْتَ عَلاَّمُ الْغُيُوبِ، اَللَّهُمَّ إِنْ كُنْتَ تَعْلَمُ أَنَّ هَذَا الأَمْرَ -وَيُسَمِّي حَاجَتَهُ- خَيْرٌ لِي فِي دِينِي وَمَعَاشِي وَعَاقِبَةِ أَمْرِي -أَوْ قَالَ: عَاجِلِهِ وَآجِلِهِ- فَاقْدُرْهُ لِي وَيَسِّرْهُ لِي ثُمَّ بَارِكْ لِي فِيهِ، وَإِنْ كُنْتَ تَعْلَمُ أَنَّ هَذَا الأَمْرَ شَرٌّ لِي فِي دِينِي وَمَعَاشِي وَعَاقِبَةِ أَمْرِي -أَوْ قَالَ عَاجِلِهِ وَآجِلِهِ- فَاصْرِفْهُ عَنِّي وَاصْرِفْنِي عَنْهُ وَاقْدُرْ لِيَ الْخَيْرَ حَيْثُ كَانَ ثُمَّ أَرْضِنِي بِهِ)"

Cabirê kurê ‘Ebdulah (Xwedê lê razîbe) dibê: Pêxember (Selat û selam li ser bin) çawa ku em hînî sureyê Qur’anê dikirin wisa jî, em hînî Îstîxarê (xwestina qencîyê ji xwedê) dikirin. Pêxember (Selat û selam li ser bin) digo: Wexta ku we xwest ku hun karekî bikin; ‘ewil bi xeyn ji ferzê du rik’et nimêj bikin û paşî vê duayê bixwînîn. Xwedêyo ! Ez bi xatirê zanîna te xêrê ji te dixwazim, ez bi xatirê qudreta te karebûnê ji te dixwazim û ez ji pircomerdiya teyî mezin ji te dixwazim. Lewra: Birastî tu dikarî û ez nikarim, tu dizanî û ez nizanim û tu zanayê hemî nependiyayî. Xwedêyo! Eger tu dizanî ku ev tişta ha «yê hewcedariya xwe bi nav bike» di dînê min de û di jîna mi de û di encama rewşa min de ji bona min re qence vêca wê ji min re pêkbîne û wê ji min re asan bike paşê ji min re wê bi xêr û bêr bike. Ne; eger tu dizanî ev tiştê ha di dînê min de, di jîna mi de û di encama rewşa min de ji min re ne başe, vêca wê ji ser min dagerîne, min jî jê dagerîne û li her derê ji min re qenciyê pêk bîne û paşî min pê bi de qayilkirin.”

**Duaya ji bo miriyan**

"اَللَّهُمَّ اغْفِرْ لَهُ وَارْحَمْهُ، وَعَافِهِ، وَاعْفُ عَنْهُ وَأَكْرِمْ نُزُلَهُ، وَوَسِّعْ مُدْخَلَهُ، وَاغْسِلْهُ بِالْمَاءِ وَالثَّلْجِ وَالْبَرَدِ، وَنَقِّهِ مِنَ الْخَطَايَا كَمَا نَقَّيْتَ الثَّوْبَ الأَبْيَضَ مِنَ الدَّنَسِ، وَأَبْدِلْهُ دَاراً خَيْراً مِنْ دَارِهِ، وَأَهْلاً خَيْراً مِنْ أَهْلِهِ، وَزَوْجاً خَيْراً مِنْ زَوْجِهِ، وَأَدْخِلْهُ الْجَنَّةَ، وَأَعِذْهُ مِنْ عَذَابِ الْقَبْرِ وَعَذَابِ النَّارِ

Di piştî tekbira sisîyê de weha tê dua kirin: Xwedêyo! Wi bi bağişîne û lê dilovanî bike, wî bê êş bihêle û lê bibûre, û qedrê mêvaniya wî bigre û hundurê gora wi fireh bike û tu wî bi berfê, avê û tayrokê (a dilovanîya xwe, ji qerêja gunehan) bişo. Û xaniyeki ji xaniyê wî çêtir bidyê û wî bêxe bihiştê de û wî ji azara gorê û azara êgir biparêze.

**Ji bo rakirina kovanan**

**Çi kesê derd û kovanek were ser vêca bibêje:**

"اَللَّهُمَّ إِنِّي عَبْدُكَ، ابْنُ عَبْدِكَ، ابْنُ أَمَتِكَ، نَاصِيَتِي بِيَدِكَ، مَاضٍ فِيَّ حُكْمُكَ، عَدْلٌ فِيَّ قَضَاؤُكَ، أَسْأَلُكَ بِكُلِّ اسْمٍ هُوَ لَكَ، سَمَّيْتَ بِهِ نَفْسَكَ، أَوْ أَنْزَلْتَهُ فِي كِتَابِكَ، أَوْ عَلَّمْتَهُ أَحَداً مِنْ خَلْقِكَ، أَوْ إِسْتَأْثَرْتَ بِهِ فِي عِلْمِ الْغَيْبِ عِنْدَكَ، أَنْ تَجْعَلَ الْقُرْآنَ رَبِيعَ قَلْبِي، وَنُورَ صَدْرِي، وَجَلاَءَ حُزْنِي، وَذَهَابَ هَمِّي"

Xwedêyo! Birastî ez bendeyê te me kurê bendeyê te, kurê qerwaşa te me, pêşanîka min bi destê te ye, fermana te li sermin pêk tê, vebirîna te di biwara mi de biheqî ye. Ez bi xatirê hemî navê ku ji bo te hene, çi te zatê xwe pê bi nav kiri be, yan te di wahya xwe de (ji pêxemberaki re) daxistî be, yan te ew bi yekî ji maxluqê xwe dabê hînkirin. Yan te ew li cem xwe di xezîna xeybê de ji xwe re hilanîbê, ji te dixwazin ku tu Quranê bixê bihara dilê min û rohnayîya sînga min û rabuna şîna min û çûna derdê min. Xwedê dê derd û kovanan jê bibe û di cihê wê de dilxweşiyê bidiyê.

# BAZIRGANIYA BİQAZANC

Birastî Xwedê însan di ser mexlûqên din re girtiye û ew bi qenciya axaftinê terxankiriye. Xwedê ziman kiriye aletê xeberdanê. Ew nîmetek e; di qencî û xerabiyê de têbikaranîn. Ew kesê zimên di qenciyê de bixebitîne; seadeta dinyayê digihijiyê û di cennetê de menzilên bilind. Ew kesê ne nedixêrê de bikarbîne; di dinya û axretê de tûşî helakê dibe. Piştî xwendina Qur'anê xêrtirîn ya ku merev wextê xwe tê de xerc bike zikrê Xwedê ye.

**Xêra zikrê Xwedê:** Di vê derbarê de ji Pêxember gelek fermode hatine. Yek ji wan fermodeyan: "***Ma ez ji we re ya ku ji nav emelên we herî çêtir û li cem Xwedayê we herî paqijtir û di nav dereceyên xêrên we de bilintir û ji bona we ji xerckirina zêr û zîv rindtir û ya ku hûn rastî dijminê xwe bên; vêca hûn li stuyên wan bixin yan ew li stuyên we bixin ji we re çêtir nebêjim***? Gotin: Belê. (Pêxember) Got: ***(Ew) zikrê Xwedê ye.***" **(Tirmizî)** Fermodeyeke din: "***Temtêla yê ku perwerdegarê xwe, bi ziman û dil dabaş dike û yê ku perwerdegarê xwe bi ziman û dil dabaş nake; wekî temtêla yê sax û yê mirî ye***." **(Muttefequn eleyh)** Di hedîsa qudsî de: "***Qûlê min derbarê min de çi guman bike, ez wekî gumana wî me. Heke gumana rindiyê ji min bike, ezê bi rindî vêre tevbigerim û heke gumana xerabî ji min bike, ezê wisa pê re tevbigerim û dema min di bîra xwe bîne, ez pê re me. Îdî heke ew di dilê xwe de min di bîra xwe bîne, ezê li cem xwe wî di bîra xwe bînim û heke ew min di nav civatekî de di bîra xwe bîne, ezê wî di nav civateke çêtir de di bîra xwe bînim û heke ew bostekê nêzîkî min bibe, ezê gazekê nêzîkî wî bibim. Heke ew bi meş bi ber min bê, ezê bi bez ber bi wî ve biçim***." **(Buxarî)** Û gotina Pêxember: "Yên muferrid pêşketin." Gotin: Ey resûlê Xwedê muferrid kî ne? Got: "***Ew mêr û jinên ku pir zikirdikin***." ***(muslim)*** Gotina pêxember ya ku li yekî sehabeyên xwe qewêtî kiriye: "***Bila zimanê te ji zikrê Xwedê her ter bê***." **(Tirmizî)** gelek hedîsên din jî hene.

**Zêdebûna xêran:** Xêrên kar û barên qenc zêde dibin çawa ku xêra xwendina Qur'anê zêde dibe. Ev jî bi sedem di rewşan e: **1-** Bi heseb îman, îxlas, mehebbeta di dil de ne û yên ku peyrewên wan in. **2-** Bi heseb tefekkur dil a bi zikrê û meşxûliyeta pê ye, vêca ev bi ziman tenê çênabe. Eger ev rewş tekûz be; Xwedê dike kefaretê tevekê gunehên wî û padaşa kamil didiyê. Eger ku kêm be; bi kêmasî çêdibe.

**Feydên zikrê Xwedê:** Şeyxul îslam gotiye: Zikirê Xwedê ji bona dil mîna avê ji bo masî ye. Vêca dema masî ji avê biqete rewşa wî dê bê çi?!

✷ Zikir, hezkirina Xwedê, nêzîkbûn û razîbûna wî, zêrevaniya wî û heybeta jê, veger û zîvirîna balê ve durist dike û ji bo kirina îbadetê arîkariya wî dike. ✷ Derd û kovanan ji dil dibe, dilxweşî û bextewariyê tîne û ji dil re jiyan,hêz û paqijiyê durist dike. ✷ Di dil de valahîyek û hewcedariyek heye ji bilî zikrê Xwedê çu tişt wê negire û hişkatiyek heye ji zikrê Xwedê pê ve çu tişt wê nahelîne û nerm nake. ✷Zikir, şifa û dermanê dil e, hêz û lezzeta dil e, lezeteke wisa ku mîna wê tune. Xeflet û bêhaybûn jî nexweşiya dil e. ✷ Zikrê hindik nîşana nîfaqê ye, pirê wê delîla qeweta îmanê û rastiniya hezkirina Xwedê ye. Lewra; yê ku ji tiştekî hezbike pir qala wî dike. ✷ Bende dema di ferehiyê de bi zikirkirina Xwedê xwe bi Xwedê bide naskirin, Xwedê jî di tengezariyê de wî nasdike, nemaze di ber mirin û sekeratê de. ✷ Zikir, sebebê xelasiya ji ezabê Xwedê ye, sebebê hatina aramîyê,

serdegirtina dilovaniyê û daxwaziya melaîketan ji bo lêborîna gunehan e. ✷ Zikir, zimên ji gotina pûç, ji ğîybet, seb, derew û ji mekrûhat û heraman meşxûl dike. ✷Zikir, îbadetê herî hêsan e, îbadetê herî biqedir û herî bixêr e. Ew derxên cennetê ne. ✷ Zikir, heybetê tavêje ser zikirxwênî û wî şîrîn û rûgeş dike û di dinyayê de, di gorê û axretê de jî nûr e. ✷ Zikir, selewata Xwedê û ya melaîketan li ser zikirxwênî misoger dike. Xwedê li cem melaîketan bi zikirxwênan xwe anaz dike. ✷Baştirînên xwedankaran ew ê ku di karê xwe de pirtir zikrê Xwedê dike û baştirînên rojîgiran ew ê ku di rojiya xwe de pirtir zikrê Xwedê dike. ✷ Zikir, zehmetiyê hêsan dike, tengasiyê fereh dike, giraniyê sivik dike, riziq bi xwe re tîne û bedenê bihêz dike. ✷Zikir, şeytan diqewitinê, wî ji binî ve radike, wî rezîl û riswa dike.

## Dİ SİBEH Û ÊVARÊ DE WİRDÊN ROJANE

| N | Wirdê rojane | Hejmar û dem | Tesîr û xêra wê |
|---|---|---|---|
| 1 | Ayetel kursî.[1] | Sibeh û êvaran, beriya razanê û piştî kirina nimêjên ferz. | Şeytê nêzî wî nake û dibe sebebê çûna cennetê. |
| 2 | Di ayetên ji dawîya Sûreyê Beqere.[2] | Di şevê de carekê û di malê de her kêlî tê xwendin. | Ji xerabiya her tiştî wî diparêze. |
| 3 | Sûreyê Îxlas, Feleq û Nas | Sibehan (3) car û êvaran (3) car. | Ji xerabiya her tiştî kafiyê wî ye. |
| 4 | بِسْمِ اللهِ الذِي لاَيَضُرُّ مَعَ اسْمِهِ شَيْءٌ فِي الأَرْضِ وَلاَ فِي السَّمَاءِ وَهُوَالسَّمِيعُ الْعَلِيمُ<br>“Binavê wî Xwedê ku tu tişt digel navê Wî di erd û asmanan de ziyanê nadin. Ew, bihîzerê gotinê îbadê xwe ye û zanayê bi kirinên wan e”, | Sibehan sê (3) car û êvaran sê (3) car. | Ji nişkave bela nayêne ser û çu tişt zererê nadinê. |

---

1 **Ayetel Kursî:**

﴿ اللَّهُ لَا إِلَٰهَ إِلَّا هُوَ الْحَيُّ الْقَيُّومُ ۚ لَا تَأْخُذُهُ سِنَةٌ وَلَا نَوْمٌ ۚ لَهُ مَا فِي السَّمَاوَاتِ وَمَا فِي الْأَرْضِ ۗ مَنْ ذَا الَّذِي يَشْفَعُ عِنْدَهُ إِلَّا بِإِذْنِهِ ۚ يَعْلَمُ مَا بَيْنَ أَيْدِيهِمْ وَمَا خَلْفَهُمْ ۖ وَلَا يُحِيطُونَ بِشَيْءٍ مِنْ عِلْمِهِ إِلَّا بِمَا شَاءَ ۚ وَسِعَ كُرْسِيُّهُ السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضَ ۖ وَلَا يَئُودُهُ حِفْظُهُمَا ۚ وَهُوَ الْعَلِيُّ الْعَظِيمُ ﴾

(Xwedê (ew e ku) tu mabûdê biheq ji Wî pê ve ttun in, her sağ e. her ragirê heyînê ye, ne xew wî digre ne jî hênijîn. Her jê re ye tişta di esmanan û ya di erdê de. Kî ye ewê ha, yê ku bê destura wî, li nik wi şefa‘etê bike? Tişta mirovan kirî û ya ku dê hê bikin ew pê dizanê. Ji ya ku wî xwestiye pê ve, kes bi tiştekî jî zanîna wî nizanin. Kursiyê wî erd û ezman di xwe de vehewandine. Parastina wan pê giran nayê û ew e yê bilind, yê mezin.)

2 **Dawîneya sûreyê Beqere:**

﴿ ءَامَنَ الرَّسُولُ بِمَا أُنْزِلَ إِلَيْهِ مِنْ رَبِّهِ وَالْمُؤْمِنُونَ ۚ كُلٌّ ءَامَنَ بِاللَّهِ وَمَلَائِكَتِهِ وَكُتُبِهِ وَرُسُلِهِ لَا نُفَرِّقُ بَيْنَ أَحَدٍ مِنْ رُسُلِهِ ۚ وَقَالُوا سَمِعْنَا وَأَطَعْنَا ۖ غُفْرَانَكَ رَبَّنَا وَإِلَيْكَ الْمَصِيرُ ﴿٢٨٥﴾ لَا يُكَلِّفُ اللَّهُ نَفْسًا إِلَّا وُسْعَهَا ۚ لَهَا مَا كَسَبَتْ وَعَلَيْهَا مَا اكْتَسَبَتْ ۗ رَبَّنَا لَا تُؤَاخِذْنَا إِنْ نَسِينَا أَوْ أَخْطَأْنَا ۚ رَبَّنَا وَلَا تَحْمِلْ عَلَيْنَا إِصْرًا كَمَا حَمَلْتَهُ عَلَى الَّذِينَ مِنْ قَبْلِنَا ۚ رَبَّنَا وَلَا تُحَمِّلْنَا مَا لَا طَاقَةَ لَنَا بِهِ ۖ وَاعْفُ عَنَّا وَاغْفِرْ لَنَا وَارْحَمْنَا ۚ أَنْتَ مَوْلَانَا فَانْصُرْنَا عَلَى الْقَوْمِ الْكَافِرِينَ ﴾

“Peyxamber bi wehya ku ji cem Xwedayê wî jê re hatî bawerî anî. Mu’minan hemîyan jî, bi Xwedê Te’ala û bi melaîketên Wî û bi kitêbên Wî û bi peyxamberên Wî bawerî anîn, (û dibêjin:) em cudayiyê naxina navbera tu yekî ji peyğemberên Wî (ku bi hinekan bawer bikin û hinekan jî înkar bikin). (Peyxember û mu’minan) Gotin: (Xwedayê me!) Me fermana te bihîst û em ji te re berdest bûn. Xwedayê me! Em lêbûrîna gunehên xwe ji te dixwazin û veger her bi bal te ve ye.Xwedê Te’ala her kesî bes li gorî hêza wî, wî binbar dike, xêra ku bi dest xistî her jê re ye û gunehên ku bidest xwe ve anine jî her di stuyê wî de ne. Xwedayê me! Eger em (fermanên te) jibîr bikin, yan jî em (qedexeyên te) bi bêhemdî bikarbînin, li me negre. Xwedayê me! herwekî te barê giran li yên berîya me kirî, wisa li me bar neke. Xwedayê me! barê ku em qe nikaribin hilgirin jî li me bar neke. Li kêmasîyên me bibûre, gunehên me veşêre û dilovaniyê xwe li me bike. Xwediyê me her tu yî, êdî (bi vê xwedîtîya) li hember desteka kafiran me serdest bike.”

| | | | |
|---|---|---|---|
| 5 | أَعُوذُ بِكَلِمَاتِ اللهِ التَّامَّاتِ مِنْ شَرِّ مَا خَلَقَ<br>Ez xwe bi bêjeyên (kelîme) Xwedê (*celle celaluhû*) yên tekûz ji xerebîya tişta ku Wî aferandiye diparêzim.” | Sibehan sê (3) car û êvaran sê (3) car û deme bikeve malekê. | Cihan ji her zererê diparêze |
| 6 | “حَسْبِيَ اللهُ لاَ إِلَهَ إِلاَّ هُوَ عَلَيْهِ تَوَكَّلْتُ وَهُوَ رَبُّ الْعَرْشِ الْعَظِيمِ<br>“Xwedê Te’ala besî min e, ji wî pê ve tu xweda nîn in. Min her xwe siparte wî û ew xwediyê arşê mezin e”. | Sibehan (7) car û êvaran (7) car. | Ji rewşa dinya û axretê Xwedê besî wî ye ji ya ku jê re lazime. |
| 7 | “رَضِيتُ بِاللهِ رَبًّا، وَبِالإِسْلاَمِ دِيناً، وَبِمُحَمَّدٍ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَسَلَّمَ نَبِيّاً<br>“Min ji Xwedê Te’ala bi perwerdegarî û ji îslamê bi rêbazî û ji Muhemmed *(silavên Xwedê lêbin)* bi peyxamberî qîma xwe anî. | Sibehan (3) car û êvaran (3) car. | Heqe li ser Xwedê Teala ku wî razî bikê. |
| 8 | اَللَّهُمَّ بِكَ أَصْبَحْنَا، وَبِكَ أَمْسَيْنَا، وَبِكَ نَحْيَا، وَبِكَ نَمُوتُ وَ إِلَيْكَ النُّشُورُ<br>“Xwedêyo! Her bi te li me bu sibeh û her bi te li me bu êvar û her bi te em dijîn û her bi te em dimrin û veger bes bi bal te ve ye”. Dema lê dibû êvar jî weha digot:<br>"اللَّهُمَّ بِكَ أَمْسَيْنا، وَبِكَ نَحْيا، وَبِكَ نَمُوتُ وَإِلَيْكَ الْمَصِيرُ"<br>“Xwedêyo ! Her bi te li me bu êvar û her bi te em dijîn û her bi te em dimrin û veger bes bi bal te ve ye”. | Sibe û êvaran. Sibeh û êvaran. | Em li serê hatine teşwîqkirin. |
| 9 | أَصْبَحْنَا عَلَى فِطْرَةِ الإِسْلاَمِ وَعَلَى كَلِمَةِ الإِخْلاَصِ، وَعَلَى دِينِ نَبِيِّنَا مُحَمَّدٍ صَلَّى اللهُ عَلَيْهِ وَسَلَّمَ، وَعَلَى مِلَّةِ أَبِينَا إِبْرَاهِيمَ، حَنِيفاً مُسْلِماً وَمَا كَانَ مِنَ الْمُشْرِكِينَ“<br>“Li ser exlaqê mislimantiyê û li ser bêjeya ixlasê û li ser dînê peyxamberê me Muhemmed (Selat û selam li ser bin) û li ser ola bavê me Îbrahîm (*silavên Xwedê lêbin*) li me bû sibeh. Îbrahîm ji her puçîyê parastî û ji Xwedê Te’ala re berdestbuyî bû. Ew qe ji mişrikan jî nebû”. | Dema lê bû sibeh | Pêxember bi vê duayê dua dikir. |
| 10 | اَللَّهُمَّ مَا أَصْبَحَ بِي مِنْ نِعْمَةٍ أَوْ بِأَحَدٍ مِنْ خَلْقِكَ فَمِنْكَ وَحْدَكَ لاَ شَرِيكَ لَكَ، فَلَكَ الْحَمْدُ وَلَكَ الشُّكْرُ<br>”Xwedêyo! Çi qenciya li min bibê yan jî bi kîjan mexlûqê te bibê vêca ew ji cem te tenê ve ye, tu hevpişk ji te re nîn in. Êdî hemû pesn her ji te re bin û şukir jî bes ji te re bin.” Di şeşevê de jî dê bibêje | Sibehan (3) car û êvaran (3) car. | Heqe li ser Xwedê Teala ku wî razî bikê. |
| 11 | اَللَّهُمَّ إِنِّي أَصْبَحْتُ أُشْهِدُكَ وَأُشْهِدُ حَمَلَةَ عَرْشِكَ، وَمَلاَئِكَتَكَ وَجَمِيعَ خَلْقِكَ، أَنَّكَ أَنْتَ اللهُ لاَ إِلَهَ إِلاَّ أَنْتَ وَحْدَكَ لاَ شَرِيكَ لَكَ، وَأَنَّ مُحَمَّداً عَبْدُكَ وَرَسُولُكَ”<br>“Xwedêyo! Birastî li min bu sibeh, ez te dikime şahid, barhilgirên arşê te û milyaketên te û hemu mexlûqên te jî dixime şahid ku Tu, her Xwedê yî, ji te pêştir tu mabûdê heq tun in, bi tenê yî, Ti şerîk ji te re tun in û hemin Muhemmed (Selat û selam li ser bin) bendeyê te û qasidê te ye”.<br>Di şevê de dê bibêje: اني امسيت | Sibehan (3) car û êvaran (3) car. | Heqe li ser Xwedê Teala ku wî razî bikê. |
| 12 | اَللَّهُمَّ عَالِمَ الْغَيْبِ وَالشَّهَادَةِ فَاطِرَ السَّمَاوَاتِ وَالأَرْضِ، رَبَّ كُلِّ شَيْءٍ وَمَلِيكَهُ، أَشْهَدُ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ أَنْتَ، أَعُوذُ بِكَ مِنْ شَرِّ نَفْسِي، وَمِنْ شَرِّ الشَّيْطَانِ وَشِرْكِهِ، وَأَنْ أَقْتَرِفَ عَلَى نَفْسِي سُوءاً، أَو أَجُرَّهُ إِلَى مُسْلِمٍ<br>“Xwedayê min! (Hey) Zanayê bi tişta nependî û ya eşkere. (Hey) Peydakerê erd û asmanan. (Hey) Rebbê her tiştî û padîşahê wî. Ez şehdeyîyê didim ku ji te pê ve tu xweda nîn in. Ez ji ber nebaşiya xwe û ji ber neqenciya şeytên û dava wî, xwe davême bextê te. Ez xwe davême bextê te da ku ez bi nebaşî suçkarîyê bi şexsê xwe re nekim û ez wê xêrabiyê | Sibehan (3) car û êvaran (3) car. | Heqe li ser Xwedê Teala ku wî razî bikê. |

| | | | |
|---|---|---|---|
| | bi ser tu misilmanî ve jî ne kêşim”. | | |
| 13 | اللّٰهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنَ الْهَمِّ وَالْحَزَنِ، وَأَعُوذُ بِكَ مِنَ الْعَجْزِ وَالْكَسَلِ، وأَعُوذُ بِكَ مِنَ الْجُبْنِ والْبُخْلِ، وأعوذُ بِكَ مِنْ غَلَبَةِ الدَّيْنِ وَقَهْرِ الرِّجَالِ<br>“Xwedêyo! Ez bi te xwe ji xem û kul û kovanan diparêzim. Ez xwe, ji neçarî û bêxîretîyê bi te diparêzim. Ez xwe, ji deynê giran ê ku serî ji mirovî distîne û ji serdestiya mêran bi te diparêzim”. Ebu Umame dibêje: Min ev du‘a gotin, vêca Xwedê Teala xem û derdê min birin û deynên min jî li ser min rakirin. | Sibeha careke û êvaran careke | Derd û kovanên wî dibe û deynê wê dibe. |
| 14 | اَللّٰهُمَّ أَنْتَ رَبِّي لاَ إِلَهَ إِلاَّ أَنْتَ خَلَقْتَنِي وَ أَنَا عَبْدُكَ، وَ أَنَا عَلَى عَهْدِكَ وَ وَعْدِكَ مَا اسْتَطَعْتُ، أَعُوذُ بِكَ مِنْ شَرِّ مَا صَنَعْتُ، أَبُوءُ لَكَ بِنِعْمَتِكَ عَلَيَّ، وَأَبُوءُ بِذَنْبِي فَاغْفِرْ لِي فَإِنَّهُ لاَ يَغْفِرُ الذُّنُوبَ إِلاَّ أَنْتَ<br>“Xwedêyo! Bes tu yî perwerdegarê min, ji te pêştir tu Xweda tun in. Te, ez xuliqandime û ez bendeyê te me. Ez heya karim li ser peyman û sozê te me. Ez ji ber xerabiya tişta min kirî xwe davême ber bextê te. Ez li ber te li qenciyên te yên li ser xwe mukir têm. Ez li gunehê xwe jî mukir têm. Vêca li gunehên min bibore. Êdî birastî ji te pêştir tu kes li gunehan nabore”. | Serpişka duayê ye: Sibeh û êvaran tê xwendin. | Ew kesê bi roj û bi bawer bixwîne û roja xwe de bim re, yan bi şev bixwîne û di şeva xwe de bixwîne ew ji ehlê cennetê dibe. |
| 15 | “يَاحَيُّ يَا قَيُّومُ بِرَحْمَتِكَ أَسْتَغِيثُ أَصْلِحْ لِي شَأْنِي كُلَّهُ وَلاَ تَكِلْنِى إِلَى نَفْسِى طَرْفَةَ عَيْنٍ<br>“Hey zatê her sağ! Hey ragirê heyînê! Ez bi xatirê dilovanîya te bi bal te ve hawar dikim ku tevekê rewşa min, serast bikê û bi qasî çavgirtinakê jî min nespêre nefsa min. | Sibeh û êvaran | Pêxember ev dua li qîza xwe Fatîme wesiyet kiriye. |
| 16 | اَللّٰهُمَّ عَافِنِي فِي بَدَنِي، اَللّٰهُمَّ عَافِنِي فِي سَمْعِي، اَللّٰهُمَّ عَافِنِي فِي بَصَرِي اَللّٰهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنَ الْكُفْرِ وَالْفَقْرِ، وَأَعُوذُ بِكَ مِنْ عَذَابِ الْقَبْرِ، لاَ إِلَهَ إِلاَّ أَنْتَ<br>“Xwedêyo! Laşê min rehet bike. Xwedêyo! Guhêmin rehet bike. Xêdêyo! Nexweşiyê ji çavê min rake. Ji te pê ve tu Xweda tun in. Xwedêyo! Ez ji ber gawiriyê û xizaniyê xwe dawême bextê te û ez ji ber azabê gorê xwe davême bextê te, ji Te pê ve tu Xweda nîn in. | Sibehan sê (3) car û êvaran sê (3) car. | Ji nişkave bela nayêne ser û çu tişt zererê nadinê. |
| 17 | اَللّٰهُمَّ إِنِّي أَسْأَلُكَ الْعَفْوَ وَالْعَافِيَةَ فِي الدُّنْيَا وَالآخِرَةِ، اَللّٰهُمَّ إِنِّي أَسْأَلُكَ الْعَفْوَ وَالْعَافِيَةَ فِي دِينِى وَدُنْيَايَ وَأَهْلِي، وَمَالِي، اَللّٰهُمَّ اسْتُرْ عَوْرَاتِي، وَآمِنْ رَوْعَاتِي، اَللّٰهُمَّ احْفَظْنى مِن بَيْنِ يَدَيَّ، وَمِنْ خَلْفِى، وَعَنْ يَمِينِى، وَعَنْ شِمَالِي، وَمِنْ فَوْقِي، وَأَعُوذُ بِعَظَمَتِكَ أَنْ أُغْتَالَ مِنْ تَحْتِى”<br>Xwedêyo! Birastî ez di dinya û axîretê de lêborîn û rehetîyê ji te dixwazim. Xwedêyo! Birastî ez lêborîn û rehetiyê di dînê xwe de û di dinya xwe de, di malbat û malê xwe de ji te dixwazim. Xwedêyo! Kêmasî û şermegeha min veşêre û tirsa min ewleyî bike.Xwedêyo! Tu min ji pêş min ve û ji paş min ve, ji rastê min ve û ji çepê min ve û ji raserî min ve biparêze. Ez xwe davême bextê mezinahiya Te ku ez ji bin xwe ve (bi erdhejandinê û yên mîna wê) neyême kuştin” | Sibehan sê (3) car û êvaran sê (3) car. | Ji nişkave bela nayêne ser û çu tişt zererê nadinê. |
| 18 | “سُبْحَانَ اللهِ وَبِحَمْدِهِ، عَدَدَ خَلْقِهِ، وَرِضَا نَفْسِهِ، وَزِنَةَ عَرْشِهِ وَمِدَادَ كَلِمَاتِهِ<br>“Ez Xwedê tevli pesindana wî pak didêrim, bi qandi jimara maxluqatê wî û razîbûna zatê wî û giranîya ‘Erşê wî û hibra nivîsandina bêjeyên (kelîmeyên) wî. | Sibehan sê (3) car û êvaran sê (3) car. | Ji nişkave bela nayêne ser û çu tişt zererê nadinê. |

# ÇEND GOTIN Û KIRYARÊN KU DERBARÎ WAN DE XÊRÊN MEZIN MEZIN HATİNE

| R | Gotin û karê bixêr | Ji Fermodeyên Pêxember Padaşt û Xêra wê. Pêxember (Selat û selam li ser bin) dibêje: |
|---|---|---|
| 1 | لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ وَحْدَهُ لاَشَرِيكَ لَهُ، لَهُ الْمُلْكُ وَلَهُ الْحَمْدُ، وَ هُوَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ | Ew kesê di rojê de 100 carî bibêje: (لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ وَحْدَهُ لاَشَرِيكَ لَهُ، لَهُ الْمُلْكُ وَلَهُ الْحَمْدُ، وَ هُوَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ) jê re beranberiya azadkirina 10 koleyan heye, jê re 100 xêr tê nivîsandin, 100 guneh tê xîşkirin, wê royê heyanî lê bibe êvar ji şeytan tê parastin û ji bilî kesê ku jê zêdetir gotibe, kesî ji ya wî çêtir çu tişt bikarneaniye. |
| 2 | "سُبْحانَ اللهِ الْعَظِيمِ وَبِحَمْدِهِ" | Ew kesê bibêje:"سُبْحانَ اللهِ الْعَظِيمِ وَبِحَمْدِهِ" Ez Xwedayê mezin tevlî pesinkirina wî pak didêrim» di cennetê de jê re dareke xurma tê çandin. |
| 3 | "سُبْحانَ اللهِ وَبِحَمْدِهِ سُبْحانَ اللهِ الْعَظِيمِ" | Pêxember (s.a.v.) gotiye: Ew kesê 100 carî bibêje: "سُبْحانَ اللهِ وَبِحَمْدِهِ سُبْحانَ اللهِ الْعَظِيمِ" (Ez Xwedê tevli pesindana wî, pak didêrim. Ez Xwedayê mezin pak didêrim) gunehên wî çendî mîna kefa behrê bin jî têne xwar û roja qiyametê, ji bilî kesê ku jê zêdetir gotibe, kesî ji ya wî çêtir çu tiştî nayîne. ***"Ev di kelîme ne, li ser ziman sivikin, di şehînê de giranin û bi bal Xwedê ve şîrînin:*** |
| 4 | لاَحَوْلَ وَلاَ قُوَّةَ إِلاَّ بِاللهِ | Ebdullahê kurê Qeys gotiye: Pêxember (Selat û selam li ser bin) got: Hey Ebdullahê kurê Qeys! Ma ez xezînakê ji xiznên bihiştê ravayê te bikim? Min got: Belê hey Pêxemberê Xwedê! hey Pêxembe got: "Naxwe bi (لاَحَوْلَ وَلاَ قُوَّةَ إِلاَّ بِاللهِ) zikrê Xwedê bike. |
| 5 | **Xwestina Cennetê û xweparêziya ji êgir** | Ew kesê 3 caran ji Xwedê cennetê bixwaze; cennet dibêje: Xwedayê min, wî têxe cennetê û kesê ku 3 caran xwe ji êgir biparêze; agir dibêje: Xwedayêm, wî ji êgir biparêze. |
| 6 | **Kefaretê runiştina civatê** | Ew kesê di civatekê de rûne, vêca tê de xeletiyên wî pir bibin, êdî beriya ku ji wê civatê rabe, bibêje: "سُبْحانَكَ اللَّهُمَّ وَبِحَمْدِكَ، أَشْهَدُ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ أَنْتَ، أَسْتَغْفِرُكَ وَ أَتُوبُ إِلَيْكَ" "***Ez tevî pesindana te, te pak didêrim. Xwedêyo! Ez şehdeyî didim ku ji te pê ve tu mabûdê bi rastî tun in. Ez bexşandina xwe ji te divêm û li ber te tobe dikim***" her ew tiştên ku di wê civatê de gotin tên baxşandin. |
| 7 | **Jiberkirina çend ayetan ji sûreyê Kehf** | Ew kesê deh (10) ayetan ji serê sûreyê Kehf bixwîne; ew ji fitna deccal tê parastin. |
| 8 | **Selewatdayîna li ser Pêxember** | Pêxember gotiye: Ew kesê yek selewatekê li ser min bide; Xwedê deh (10) selewatan li ser dide, deh gunehên wî jê dikevin û deh dereceyên wî bilind dibin. |
| 9 | **Xwendina çend sûre û ayetên ji Qur'anê** | Ew kesê di şev û royê de pêencî (50) ayetî bixwîne; ew ji xafilan nayê nivîsandin. Ew kesê sed (100) ayetî bixwîne; ew ji îbadetkeran tê nivisandin. Ew ê ku dised (200) ayetî bixwîne; roja qiyametê Qur'an pê re nekev niqaşê. Ew ê ku pênsed (500) ayetî bixwîne; jê re çiyayek xêr tê nivisandin. **Sûreyê 'Îxlas' hemberê sêyeka Qur'anê ye.** |
| 10 | **Padaşa mûezzinan** | "Birastî di mudê sehkirina dengê muezzinî de, çi ins, cin û tişên ku dengê wî seh bikin her ew jê re şehdeyiyê didin" "Muezzin, roja qiyametê ji her kesî zêdetir gewrîdirêj in". |
| 11 | **Olamdana muezzînî bike li cem azan û duayên piştî wê** | Pêxember gotiye: Ew kesê dema dengê azanê seh bike, bibêje: اَللَّهُمَّ رَبَّ هَذِهِ الدَّعْوَةِ التَّامَّةِ، وَالصَّلاَةِ الْقَائِمَةِ، آتِ مُحَمَّداً الْوَسِيلَةَ وَالْفَضِيلَةَ، وَابْعَثْهُ مَقَاماً مَحْمُوداً الَّذِي وَعَدْتَهُ Xwedêyo! Dilovanîyê li Muhammed (Selat û selam li ser bin) û malbata Muhammed bi barîne. Xwedêyo! Hey xwedîyê! Vê bangewazî(ya tewhidê) ya tekûz û vê nimêja pêkhatî, Wesilê û fedîlê (ku di meqamê bilindin di bihiştêde) bide Muhammed û wî bi hinêre şunwarê pesinkirî ku te pê re soz dayîye, şefaeta min lê helal dibe. |

| | | |
|---|---|---|
| 12 | **Desmêjgirti na baş** | Ew kesê desmêj girtibe, vêva xweşik girtibe; gunehên wî ji bedena wî derdikevin; heyanî ku ji bin neynokê wî derdikevin. |
| 13 | **Duaya di piştî desmêjê de** | Çi keskî ji we desmêj bigire, vêca ew desmêja xwe temam û xweşik bigre û paşê bibêje: "أَشْهَدُ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ وَحْدَهُ لاَ شَرِيكَ لَهُ وَأَشْهَدُ أَنَّ مُحَمَّداً عَبْدُهُ وَرَسُولُهُ" Ez şehdeyiyê didim ku ji Xwedê pê ve tu mabûdê bi rastî tun in û ez şehdeyiyê didim ku Muhemmed (Selat û selam li ser bin) bendeyê wî û pêxemberê Wî ye, jê re heşt (8) deriyê cennetê vedibin, di kîjanî re bixwaze dê bikeviyê. |
| 14 | **Di reket sunetê piştî desmêjê** | Çi kesê ku destmêj bigre, vêca desmêja xwe jî rind bigre, paşê rabe du rek'et sunet nimêjke, ber û dilê xwe bide ser; her cennet jê re wacib dibe. |
| 15 | **Pirbûna gavên ber bi mizgeftê ve** | Ew kesê ku here mizgefta ku cemaet lê çêdibe; vêva her gavekî gunehekî xîşdike û gavek -biçûn û hatin ve- jê re xêrek tê nivisandin. |
| 16 | **Amadakarî û zûçûyîna ji bo nimêja Înê** | Ew kesê ku roja Înê xwe bişo û bide şuştin, paşê ecele bike û bi xelkê bide lezkirin, bimeşe û siwar nebe, nêzî îmamî bibe vêca lê guhdarî bike û xeber nede; jê re bi her gavekê xêra rojî û nimêja emelê salekê heye. Zilamek ku roja Înê xwe bişo, xwe paqijbike li gorî teqeta xwe, ji dohn û bînxweşiya xwe li xwe bide, paşê derkeve mizgeftê û nevbera di kesan ji hev neqetîne, paşê nimêja ku li ser ferz e bike û paşê dema îmam bipeyivê ew sikût bike; Xwedê yê gunehên navbera wê Înê û Îna ku were bibexşîne. |
| 17 | **Gihiştina tekbîra îhramê** | Ew kesê çil royî bicemaet ji bo Xwedê nimêj bike ku bigihije tekbîra ewil; jê re di bêrîbûn tên nivisîn: bêrîbûna ji êgir û bêrîbûna ji nifaqê. |
| 18 | **Kirina nimêja ferz bicemaetî** | Nimêja ku bicemaet were kirin ji nimêja ku bêcemaet werekirin bi bistûheft (27) dereceyan zêdetir e. |
| 19 | **Nimêjkirina Eşa û fecrê bicemaetî** | Ew kesê nimêja Eşayê bi cemaetî nimêjke herwekî wî nîveka şevê nimêjkiriye û yê ku nimêja fecrê bi cemaetî nimêj ke herwekî wî tevekê şevê nimêjkiriye. |
| 20 | **Nimêjkirina di sefa ewil de** | Eger mirovan xêra azanê û sefa ewil bizaniya, paşê cih nedîtaye ji bilî ku pişkê bavêjin; dê wan pişk bavêta da biketa sefa ewil. |
| 21 | **Parastina sunetên rewatib** | Ew kesê di şev û royê de, bixên nimêja ferz diwanzdeh (12) riket nimêj bike; ew di cennetê de xaniyekê ji xwe re ava dike. Ew: çar reket berî nimêja nîvro, dido piştî wê, dido piştî nimêja mexribê, dido piştî nimêja Eşayê û dido berî nimêja fecrê. |
| 22 | **Merev nimêjên nafîle pir bike û li ser dizîkirina wan birijd be.** | Li ser te pêdivî ye ku tu pir sicûdan (nimêjan) bikê; birastî çiqas tu secdekê ji Xwedê re bibê; Xwedê dereceyekê te bilind dike û gunehekê ji ser te radike. Dema zilam nimêjeke nafîle bike ku kes wî nebîne; ew beranberî 25 nimêjên ku li ber çavê xelkê dike. |
| 23 | **Ratibên berî fecrê û ferza nimêja fecrê** | Di reketê beriya nimêja fecrê ji dinyayê û yên tê de bixêrtir e. ew kesê nimêja fecrê (sibehê) bike ew di zimeta Xwedê de ye. |
| 24 | **Nimêja Duha (nimêj a taştê)** | Her ro li ser her movika yekî ji we serqeyek pêdivî ye, vêca her tesbîhek (سُبْحَانَ اللهِ) serqe ye, her tehmîdek (وَالْحَمْدُ لِلهِ) serqe ye, her tehlîlek (لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ) serqe ye, her tekbîrek (وَاللهُ أَكْبَرُ) serqe ye, fermana bi başiyê serqe ye û paşdeêxistina ji nebaşiyê serqe ye, di reket nimêj ku wextê taştê bikê dikeve ber wan de. |
| 25 | **Ewê ku nimêjgeha xwe de rûne û zikrê Xwedê dike** | Melaîket, heyanî ku hun di nimêjgeha xwe de rûniştîbin selewatan li ser we didin bi egera ku hun nepeyivin. **Dibêjin: Xwedêyo, wî bibexşîne! Xwedêyo, dilovaniya xwe lêbike!** |
| 26 | **Piştî ku nimêja fecrê bicemaetî kir, zikrê Xwedê bike** | Ew kesê nimêja sibehê bi cemaet nimêjke, paşê rûne heyanî ku roj derkeve zikrê Xwedê bike, paşê di reket nimêj bike; jê re heye mîna hec û umreyeke tekûz, tekûz, tekûz. |
| 27 | **Ewê ku şiyar bibe,** | Ew ê ku bi şev şiyarbe û jina xwe jî şiyarke, vêca bi hevre di |

| | | |
|---|---|---|
| | **nimêje şevê bike û jina xwe jî şiyarke** | reket nimêj bikin, ew her du ji wan kesên ku ji bo Xwedê pir zikir dikin tên nivisandin. |
| 28 | **Ewê ku niyeta nimêja şevê bike û xew zora wî bibe** | Çi kesê ku di şevê de nimêja wî hebe, vêca xewê zor dayê û nimêja xwe nekir, Xwedê her xêra wê nimêjê jê re dinivise û ew xewa wî jî jê re dibe sedeqe. |
| 29 | **Duaya wî kesê ku dikeve sûkê** | Dema kete sûkê ku bibibêje: لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ وَحْدَهُ لاَ شَرِيكَ لَهُ، لَهُ الْمُلْكُ وَ لَهُ الحَمْدُ، يُحْيِي وَيُمِيتُ وَهُوَ حَيٌّ لاَ يَمُوتُ، بِيَدِهِ الْخَيْرُ وَهُوَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ Ji Xwedê pêştir tu mabûdê bi rastî tun in, bi tenêye, tu hevpişk jê re tun in. Xwedanî her jê re ye, pesn jî her jê re ye, dijîne û dimirîne û ew sağ e û namire, rindi her bi destê wî ye û ew li ser her tiştî qadir e, Xwedê jê re hezar hezar xêr dinivise, hezar hezar guneh xîş dike û jê re hezar hezar derece bilind dike. |
| 30 | **Di piştî nimêja ferz de** سُبْحَانَ اللهِ، وَالْحَمْدُ للهِ، وَاللهُ أَكْبَرُ **(33) caran û bi** 'لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ وَحْدَهُ... bidawî bike | Çi kesê di dawiya her nimêjê de 33 caran Xwedê tesbîh bihe, 33 caran hemdê Xwedê bike, 33 caran Xwedê mezin bidêre, ev tev li ser hev bûn 99 û ya 100î bibêje: لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ وَحْدَهُ لاَشَرِيكَ لَهُ، لَهُ الْمُلْكُ وَلَهُ الْحَمْدُ، وَ هُوَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ gunehên wî tên xefirandin çiqas ku ew mîna kefa behrê bin jî. **Wateya wê:** Ji Xwedê pêştir tu mabûdê bi rastî tun in. Bi tenê ye, tu hevpişk jê re tun in xwedanîya heyînê her jê re ye pesn her jê re ye û ew li ser her tiştî qadir e. |
| 31 | **Di piştî nimêjên ferz de xwendina ayet'l-kursî** | Kî vê ayetê di piştî nimêjên ferz de bixwînê di navbera wî û çûna cennetê de bi xeyr ji mirinê tu tişt namîne. |
| 32 | **Serîdana nexweşan** | Çi musilmanê ku sibehê here serdana musilmanekî heftê hezar melaîket heyanî bibe êvar duaya xêrê jê re dikin, eger ku êvarê here serdana wî vêcarê heyanî bibe sibeh heftê hezar melaîket duaya xêrê jê re dikin û di cennetê bustanek jê re heye. |
| 33 | **Duaya jî yê wedandert re** | Ew kesê yekî xwedan musîbet bibîne, vêca bibêje: اَلْحَمْدُ للهِ الَّذِي عَافَانِي مِمَّا ابْتَلاَكَ بِهِ وَفَضَّلَنِى عَلَى كَثِيرٍ مِمَّنْ خَلَقَ تَفْضِيلاً 'Hemu pesn ji bonaXwedê bin ew ê ku ez ji wî derdê tu pêre rûbiru hiştiye rehet kirime û misoger ez di ser gelek mexluqê xwe re girtime' ew musîbet nagihijyê. |
| 34 | **Ta'zîdana xwediyên mirî** | Çi kesê here serxweşiya yekî xwedanmusîbet, bi qasî xêra wî jê re heye. Çi muminekî ku bi sedem musîbeta birayê xwe here serxweşiya wî; Xwedê ji xişrê rûmetê wî bicil dikê. |
| 35 | **Nimêja ser cenaze û pêreçûna goristanê heyanî ku wî defin bikin** | Ew kesê hazirê ser cenazeyekî bibe heyanî ku nimêj bike, jê re qîratek xêr heye. Ew ê ku heyanî ku veşêre li serê bimîne, jê re di qîrat xêr hene. Gotin: Di qîrat çiqas in? Got: Di qîrat mîna di çiyayê mezin in. Ibn Umer got: Me gelek çiya jidest berdane. |
| 36 | **Avakirina mizgeftan ji bo Xwedê** | Ew kesê ji riza Xwedê mizgeftekê çêeke, bila ew mîna hêlîna qijêkê be jî; Xwedê di cennetê de jê re xaniyekî ava dike. |
| 37 | **Înfaq (xerckirina mal ji bo Xwedê)** | Çi royeke ku bi ser bendeyan de tê her di melek têne xwar; yek ji wan dibêje: Xwedayê min, yê ku malê xwe ji bo te dide şûna wî dagire. Yê di dibêje: Xwedayê min, yê ku xercnake telef bike. |
| 38 | **Sedeqe (serqe)** | Dirhemek kete pêşiya hezar dirhemî. Gotin: Ey resûlê Xwedê, çawa? Got: Zilamek e di dirhemê wî hene vêca yekê ji wan sedeqe dide û zilamek heye malê wî pir e, vêca ew ji zêdeyiya malê xwe hezar dirhemî sedeqe dide. Çi musilmanekî ku darekê yan zadekê biçîne, vêca balinde, mirov, heywan jê bixun; ew jê re sedeqe ye. |
| 39 | **Deyndayîna bêsûdwergirtin** | Çi musilmanê ku di caran deynekî bide musilmanekê herwekî ku wî carekê sedeqe dabiyê. |
| 40 | **Muhletdayîna ji** | Kî muhletê bide yekî ku nikare deynê xwe bide; heyanî ku deynê wî |

| | | |
|---|---|---|
| | **yê ku nikare deynê xwe bidê** | safî bibe ji ber her royê jê re sedeqeyek heye. Vêca dema deynê wî safî bû û xwe lêgirt; vêca jê re di qatî wê sedeqe heye. |
| 41 | **Rojîgirtina royêkê di riya Xwedê de** | Ew kesê royekê ji bo rizaya Xwedê rojî bigre; Xwedê heftê salî wî ji agirê cehnemê dûr dike. |
| 42 | **Ji her mehê sê royan û rojîgirtina roya erefê û aşûrê** | Rojîgirtina sê royan ji her mehê beranberî rojiya salekê ye. Ji pêxember rojiya roya erefê hate pirskirin, got: ew dibe kefaretê gynehên sala bûrî û ya ku bê. Ji rojiya roya erefê hate pirskirin, got: ew dibe kefaretê gunehên sala bûrî. |
| 43 | **Rojîya şeşekê meha Şewalê** | Çi kesê meha Remezanê rojî bigre û şeş royan ji şewalê bide ser; her wekî wî tevekê salê rojî girtiye. |
| 44 | **Nimêja Terawîhan ku digel îmamî hayanî dawî bike** | Birastî zilam dema digel îmamê nimêjke heyanî ku îmam jê vala bibe, ew bi qasî nimêjkirina şefekê jê re tê hesibandin. |
| 45 | **Umreya di meha Remezanê de** | Pêxember gotiye:Umrekirina di meha Remezanê de beramberî hecekê yan heceke digel min e. ew kesê hef caran Beytê tewaf bike paşê di qam nimêj bike; ew mîna azadkirina koleyekî ye. |
| 46 | **Hecca Mebrûr** | Ew kesê hecca xwe bike, vêca tê de guneh û bêtoretiyan neke; ew çawa ku ji diya xwe çêbûbe divegere mala xwe |
| 47 | **Di dehikê ewil ê Meha Zilhiccê de ku emelê salih bike** | Tu ro mîna van royên dehekên zilhiccê tun in ku emelê qenc di wan de bi bal Xwedê ve hezkiritir bin. Sehabiyan got: Ey qasidê Xwedê, ma cihada di riya Xwedê de jî? Pêxember got: Cihad jî mîna wan nabe; ji bilî wî kesê ku bi mal û canê xwe ve derkeve cihadê û tiştek jê venegere; ew mustesna ye. |
| 48 | **Qurban** | Sehabiyên Pêxember gotin: Ey qasidê Xwedê, ev qurban çi ye? Pêxember got: ew suneta bavê we Îbrahîm e. gotin: ma ji me re çi heye? Got: Bi qasî her muyekê xêrek heye. Gotin: Hirîya wê ey qasidê Xwedê? Got: Bi qasî her muyekî ji hiriya qurbanê xêrek heye. |
| 49 | **Padaşta merevê alîm û qenciya wî** | Çêtiriya merevê alim li ser yê abid mîna çêtiriya min li ser yekî asan ji we ye. Paşê pêxember got: Xwedê û melaîketên wî, xelkê erd û asîmanan; heyanî mirûstanka di kuna xwe de û heyanî masiyên di behran de li ser yê ku xelkê fêrî xêrê dike selewatan didin. |
| 50 | **Daxwazkirina şehadetê ji dilê rast** | Ew kesê ji Xwedê di dilê rast daxwaza şehadetê bike, Xwedê wî digihîna dereceya şehîdan çendî ku ew li ser doşeka xwe bimre jî. |
| 51 | **Girînê ji tirsa Xwedê û nobedariya di rêka Vxwedê de** | Di çav hene agir nagihê wan; çavek, yê ku ji tirsa Xwedê digrî. Yê din, ew ê di riya Xwedê nobedariyê dike. |
| 52 | **Xwespartina Xwedê û daxkirin, niviştkirin û bêoxiriyê neke** | Tevekê umetan ji pêxember re hatin rapêşkirin; pêxember umeta xwe dît ku heftê hezar bê hîsab û ezab diçine çennetê. Ew; yên ku xwe dax nakin, nivîştan bi xwe ve nakin, bêoxiriyê di tiştan de nabiînin û pişta xwe bi Xwedê germ dikin. |
| 53 | **Xêra wî kesê ku bi biçûkayî zarokên wî bimrin** | Çi musilmanê ku sê zarokên wî bimirin beriya ku balix bibin; bi sebeb dilovaniya wî li ser wan Xwedê dê wî têxe cennetê. |
| 54 | **Korbûn û sebra li serê** | Xwedê Teala dibêje: "Dema ez herdu çavên bendeyê xwe kor bikim, vêca ew jî sebir bike; ez ê di şûna wan de di cennetê de di çavan bidimê." |
| 55 | **Yê ku ji tirsa Xwedê terka tiştekî bike** | Birastî ji bo ku tu ji ezabê Xwedê xwe biparêzê terka tiştekî bikî; Xwedê ji wê çêtir her dê bide te. |
| 56 | **Merevê ku şermegeh û zimanê xwe biparêzê** | Pêxember (*selat û selam li ser be*) dibêje: Ew kesê bibe kefîlê ziman û şermegeha xwe; ez jî dibime kefîlê wî ku ew ê here cennetê. |
| 57 | **Dema merev bikeve mala xwe û xwarinê** | Dema zilam têkeve mala xwe, vêca li cem ketina hundir û despêkirina xwarinê besmelê bîne, şeytan dibêje: li vêderê ne razan ne jî şivxwarin ji we re heye. Dema zilam kete hundir û li cem ketina hundir Besmele |

| | | |
|---|---|---|
| | **bixwe, Besmelê bîne** | neanî; şeytan dibêje: hun gihiştin razangehê. Dema li cem xwarinê Besmelê neyîne; dibêje: hun gihiştin razangeh û şîva xwe. |
| 58 | **Duaya piştî xwarinê û wergirtina cila nû de** | Çi kesê xwarinê bixwe û bibêje:<br>“اَلْحَمْدُ للهِ الَّذِي أَطْعَمَنِي هَذاَ وَ رَزَقَنِيهِ، مِنْ غَيْرِحَوْلٍ مِنِّي وَ لاَ قُوَّةٍ”<br>Pesin hemi ji bona Xwedê bin, ew ê ku ev xwarina ha bi me daxwarin û bê hêz û karebûna me ew kire para me.” gunehên wî yên bûrî tên bexşandin.<br>Dema cileke nû wergire û bibêje:<br>اَلْحَمْدُ للهِ الَّذِي “كَسَانِي هَذَا (الثَّوْبَ) وَرَزَقَنِيهِ مِنْ غَيْرِ حَوْلٍ مِنِّي وَلاَ قُوَّةٍ”<br>“Pesn, ji bona Xwedê bin, ew ê ku ev cila ha li min kir û ew (cil) bê hêz û bê karîna min kire para min,” gunehên wî yên bûrî tên bexşandin. |
| 59 | **Kesê bivê ku karê wî yê giran jê re hêsan bibe** | “Fâtima (Xwedê lê razîbe), destar di dest de hate cem Pêexmber (Selat û selam li ser bin) jê xizmetkarek xwest. Li ser vê yekê Pêxember ji wê û Elî re got: Ma ez ji daxwazîya we çêtir tiştekî nîşanî we nedim? «Dema hun ketin nava nivîna xwe 33 caran **Subhanellah**, 33 caran **Elhemdulîllah** û 34 caran **Ellahuekber** bibêjin, ev ji we re ji xizmetkarekî çêtir e. |
| 60 | **Duaya beriya here nivîna kebaniya xwe** | Dema yek ji we xwest ku here nivîna kebaniya xwe bila bibêje:<br>“بِسْمِ اللهِ. اَللَّهُمَّ جَنِّبْناَ الشَّيْطَانَ، وَجَنِّبِ الشَّيْطَانَ ماَ رَزَقْتَناَ”<br>“Bi navê Xwedê. Xwedêyo! Tu şeytan ji me dur bixe û şeytan ji zaroka ku tu bixê para me jî dur bixe.” Vêca eger di navbera wan de di wê munesebetê de çêbe, şeytan qet zerarê nadiyê. |
| 61 | **Jin ku mêrê xwe dilxweş bike** | “Dema jin pênc nimêjên xwe yên ferz bike, mehek rojiya xwe bigrê, namûsa xwe biparêze û bi gotina mêrê xwe bike; jê re tê gotin: tu di kîjan deriyî re dixwaze têkeve cennetê.” “Kîjan jina ku bimre û ku mêrê wê jê razîbe; ew dikeve cennetê.” |
| 62 | **Qenciya li dêwbavan û li xwediyan** | “Razîbûna Xwedê girêdayê bi razîbûna dêwbavan ve ye” “Çi kesê bixwaze ku rizqê wî fereh bibe û temenê wî dirêj bibe bila qenciyê li dêwbav û lixwediyê xwe bike.” |
| 63 | **Serperiştiya sêwîyan** | “Pêxember (*selat û selam li ser be)* teliya şehadetê û ya navîkê gihandin hev û wiha got: “Ez û yê ku serperiştiya sêwiyan dike di cennetê mîna van in.” |
| 64 | **Axlaqê xweş** | “Birastî merevê mumin bi axlaqê xwe yê xweş digihije dereceya merevê rojîgir û nimêjker.” “Ez, ji bo merevê axlaqxweş kefîlim ku di jora cennetê de xaniyek jê re were dayîn. |
| 65 | **Merhemet û dilovaniya li ser mexlûqan** | “Xwedê ji îbadê xwe ancex li yên ku rehmê dikin rehmê dike” “Hun li ser yên erdê rehmê bikin; Xwedê jî dê li we rehmê bike.” |
| 66 | **Xêrxwestina ji bo musilmanan** | “Yek ji we bawerî neanîye; heyanî ku tişta ji xwe re dixwaze ji birayê xwe re nexwaze.” |
| 67 | **şermîkarî** | “Fêhêtî û şermîkarî her bi xwe re qenciyê tîne” , “Çar tişt hene ji sunetên pêxemberan e: Şermîkarî, bîna xweş, miswak û zewac e.” |
| 68 | **Destpêkirina silavê** | “Zilamek hate cem Pêxember û got: اَلسَّلاَمُ عَلَيْكُمْ Pêxember got: Deh xêr jê re nivisîn. Paşê yekî din hat û got: اَلسَّلاَمُ عَلَيْكُمْ وَرَحْمَةُ اللهِ Pêxember got: Bist xêr. Paşê yekî din hat û got: اَلسَّلاَمُ عَلَيْكُمْ وَرَحْمَةُ اللهِ وَبَرَكَاتُهُ Pêxember got: Jê re sî xêr nivisîn. |
| 69 | **Toqekirin** | Dema du musilman laqê hev bibin vêca destê hev toqe bikin; beriya ew ji hev biqetin xwedê her wan dibexşîne. |
| 70 | **Berevaniya namûsa musilmanan** | Ew kesê di nehaziriya birayê xwe de berevaniya namûsa wî bike (xerabiyê bide alî) Xwedê jî roja qiyametê wî ji êgir diparêze. |
| 71 | **Hezkirina merevê salih û rûniştina li cıvata wan** | “Pêxember (*selat û selam li ser be)* gotiye: “Tu digel yê ku tu jê hezdikê yî.” Enes (Xwedê lê razîbe) dibêje: Mîna ku musilman bi vê gotinê dilxweş bûbûn bi tiştekî dilxweş nebûne. |
| 72 | **Ew ên ku ji bo** | Xwedê Teala gotiye: “Ew ên ku ji bo mezinahiya min ji hev |

| | | |
|---|---|---|
| | **Xwedê ji hev hezdikin** | hezdikin; ji bo wan menberên ji nurê hene ku pêxember û şehîd jê didexisin.” |
| 73 | **Duakirina ji bo musilmanan** | Duaya merevê musilman ji birayê xwe re di pişt wî de qebûl dibe. Li ber serê wî melaîketekî ku ji vî karê berpirs heye heye, çiqas ku ji birayê xwe re bi xêrê dua bike; melek dibêje: amîn (Xwedê qebul bike) û mîna wê ji ji bo tebê. |
| 74 | **Daxwaza lêborîna gunehên jin û mêrê musilman** | Çi kesê bexşandina gunehên jin û mêrê mumin ji Xwedê bike; Xwedê bi jimara her jin û mêrekî mumin xêrekê jê re dinivîse. |
| 75 | **Rakirina ezyetê ji rêyan** | Min di cennetê zilamek ku xwe toqlanîhev dikir dît ku bi sedem qutkirina darekê di rê de ku ezyet dida xelkê. |
| 76 | **Terka niqaş û derewkariyê** | “Pêxember (*selat û selam li ser be)* gotiye: Ez kefîlîm ji bo kesê ku terka nîqaşê bike çendî ew heqdarbe jî ku Xwedê xaniyekê di nav cennetê de bidiyê û ji bo kesê ku terka derewê bike çendî ku bi henekanbe jî ku xaniyekî di nîvê cennetê de bidiyê. |
| 77 | **Qurpandina hêrsê** | Çi kesê hêrsa xwe bi qurpîne digel ku ew dikare hêrsa xwe jî bikarbîne, Xwedê li ber çavên mexlûqan gazî wî dike; Xwedê salixê wî dide, hata ku wî muxeyer dike; ew kîjan horîyê bixwaze didiyê. |
| 78 | **Salixdana bi qencî û neqenciyê** | Çi kesê hun salixê wî bi qencî bidin cennet jê re misoger dibe û ew kesê hun bi nebaşî salixê wî bidin cehennem jê re misoger dibe; lewra hun li ser erdê şahidê Xwedê ne. |
| 79 | **Bînberdana musilmanî û hêsankiria karê wî û starkirina wî** | Çi kesê ji ser musilmanekî kovanekê ji kovanên dinyayê rake Xwedê jî ji ser wî kovanekê ji kovanên roja qiyametê radike, çi kesê li ser tengezarekî ferehiyê çêke Xwedê li dinya û axretê li serê ferehiyê çêdike û çi kesê musilmanekê bisitirîne Xwedê li dinya û axretê wî disitirine. |
| 80 | **Pêşxistina axretê** | Çi kesê ku axîret jê re derd û armanc be; Xwedê zengîniya xwe dixe dilê wî, rewşa wî li hev rast dike û dinya jê re tê digel ku ew rağim e. |
| 81 | **Dadmendiya hakimî, çaksaziya xortan, girêdana bi mizgeftan û hezkirina ji bo Xwedê** | Heft merev hene, Xwedê wan dixe bin siha rehmeta xwe de di wê roya ku ji siha wî pê ve tu sih tune e: karbidestê adil, ew xortê ku di îbadetê xwedê de mezin bûye, ew zilamê ku dilê wî bi mizgeftan ve girêdayî ye, di zilamên ku ji bo rizaya Xwedê ji hev hexdikin; li serê digihin hev û li serê ji hev diqetin, ew zilamê ku jineke xwedan meqam û zengîn gazî bal xwe ve dike, vêca ew dibêje: Ez ji Xwedê ditirsim, zilamekî ku sedeqeyekê dide vêca wê diveşêrê bi rewşekî wisa ku bi destê rastê dide destê çepê pênahese û ew zilamê ku bi tenha zikrê xwedê dike û hêstiran dibarîne. |
| 82 | **Daxwaza lêborîna gunehan** | Çi kesê bexşandina gunehên xwe ji Xwedê bixwaze; xwedê ji her tengasiyê ferehiyê jê re çêdike, ji her xemê re rizgariyê û ji cihekî ku hesêb nedikir rizqê wî didiyê. |

# ÇEND REWŞÊN KU DERBARÎ

# WAN DE Bİ NEKİRİNÊ FERMAN HATİYEKIRIN

| H | Rewşên ku em jê hatinepaşdexistin | Pêxember (*Sellellahu eleyhî we sellem*) derbarî wan de ferman kiriye. |
|---|---|---|
| 1 | **Emel ku bi riyakarî bike** | Xwedê Teala dibêjê: Qet tu carî hewceyiya min bi şerîkan tune ye. Çi kesê emelekî bike, di wî emelî de ji min re şerîkan çêke; ez dev ji wî û emelê wî berdidim. |
| 2 | **Çakîkirina derveyê xwe û xerabiya dil** | "Ez hinek xelkan teqez dizanim ku roja qiyametê bi xêrên mîna çiyayê Tîhamaya sipî tên huzura Xwedê, vêca Xwedê wê ber bi ba dixe. Sewban got: Ey qasidê Xwedê salixên wan ji me re bide, wan aşkere bike; em ne ji wan in û em nizanin? Pêxember got: heçî ew in ew birayên we ne; ji eşîra we ne, tişta hun bi şevê digrin ew jî jê digrin, lê belê ew; qewmekî wisa ye, dema bi heramên Xwedê re rubirû dimênin wan dikin." |
| 3 | **Kibir (xwemezindêranî)** | "Çi kesê bi qasî zereyekê kibir (xwemezindêran) di dilê wî de hebe ew naçe cennetê. Kibir: Neqebuliya heq e û biçûkdîtina mirovan e." |
| 4 | **Cildirêjî** | "Dirêjkirina eba, kiras û şaşikê, çi kesê ji kibr û quretiyê ji cilê xwe tiştekî dirêj bike Xwedê roya qiyametê lê nameyzêne." |
| 5 | **Hesed** | "Hay ji hesedê hebin; birastî jî hesed, xêran dixwo çawa ku agir êzingan jî pûş dixwo." |
| 6 | **Riba (selef)** | "Pêxember, li yê ku selefê dike û yê ku dide lanetê dike." "dirhemek ku ji selefê be ku merev wê bixwe û ew pê zanibe ji sîh û şeş zinêyan meztir e." |
| 7 | **Yê ku eraqê vedixwe** | "Merevê eyyaş, yê ku bi sihrê bawerîyê tîne û yê ku benê xweditiyê qut dike naçe cennetê",<br>"Çi kesê eraqê vexwe nimêja çil royî jê nayê qebulkirin" |
| 8 | **Derewkarî** | "Wax li rewşa wî kesê ku bi peyvekê dipayivê vêca ji bo xelkê bikenîne bi derewkarî dipeyive, wax li rewşa wîbe, wax li rewşa wîbe." |
| 9 | **Casûsî û guhveçênî** | "Çi kesê guhê bide gotina qewmekî digel ku ew pê neqayilin; roya qiyametê risasê helandi di guhê wî de tê rêtin. |
| 10 | **Wêneçêkirin** | "Roya qiyametê, ji mirovan xwediyê ezabê herî dijwar ew ê ku wêneyan çêdikin" , "Ew mala ku kûçik û wêne tê hebe melaîket nakevinê." |
| 11 | **Sebkerî/ xeberguhêzî** | "Merevê sebker (ew ê ku ji bo xerabiyê di navbera mirovan de gotinan diguhêzê) naçe cennetê." |
| 12 | **Xîybet** | "Ma hun dizanin xîybet çiye? Gotin: Xwedê û Qasidê wî dizane. Pêxember got: Tu behsa birayê xwe bikê bi ya ku ew pê nexweş bê. Hate gotin: Ka ji min re bêje: Eger ew tişta ez dibêjim tê de hebe, ew jî xibet e? Got: Eger ew tişt lê hebê te xibeta wî kiriye, eger ew tê de tunebe vêca te bêbextî lêkiriye." |
| 13 | **Lanet** | "Lanetkirina muminan mîna kujtina wan e" , "Tu carî li bayê lanetê neyênin; lewra ew emirberê Xwedê ye" û birastî çi kesê lanetê li tiştekî bike vêca ew ne ehlê lanetê be; lanet lê vedigere." |
| 14 | **Eşkerekirin a sir û razan** | "Roya qiyametê li cem Xwedê ji mirovan yê herî cîhxerab; ew zilamê ku bi jina xwe re dikeve munasebeta cinsî û ji jî pê re dikeviyê û paşê sir û veşareyê wê belav dike." |
| 15 | **Zimançorsî** | "Roya qiyametê li cem Xwedê ji hêla cih ve mirovê herî xerab; ew ê ku mirov xwe jê dûrdigrin da ku ji zimandirêjî û çorsiya wî xwe biparêzin" ,<br>"Piraniya gunehê ademîzadî ji ber zimanê wî ye." |
| 16 | **Tewanbariya musilmanî bi kufrê** | "Kijan zilamê ku ji birayê xwe re bibêje: Ey kafir, vêca birastî yek ji wan kafir dibe; Vêca eger weke ku gotiye, ew wisa ye, na; eger ne wisa be kufir li yê gotiye vedigere. |

| | | |
|---|---|---|
| 17 | **Alîdayîna ne bi bal bavê xwe ve** | “Çi kesê ne bi bal bavê xwe ve bête nisbetkirin û ew pê zanabê; cennet jê re heram e” “Bavê xwe înkar nekin, çi kesê bavê xwe înkar bike ew bêbawer e.” |
| 18 | **Tirsandina musilmanan** | “Ji bo musilmanekê durist nîn e ku musilmanekî bitirsîne” , “Çi kesê bi bal birayê xwe ve hesinekî işaret bike; vêca melaîket heyanî ku nedeyne lanetê lêtînin.” |
| 19 | **Di welatê îslamê de kuştina yê emenxwestî** | “Çi kesê merevekî ku peyman jê re hatiye dayîn bêheqî bikuje ew nagihê bîna cennetê û bîna cennetê di mesafeya sed salî de têkirin.” |
| 20 | **Neyartiya weliyên Xwedê** | Xwedê Teala gotiye: Çi kesê dijminatiya weliyekî min bike; vêca birastî min pê re herb lidarxistiye. |
| 21 | **Mezinkirina munafiq û fasiqan** | “Ji merevê munafiq re nebejin rêzdar/birêz, vêca eger ew rêzdarbe; we Xwedayê xwe xeyidandiye. |
| 22 | **Xepandine gel û civakê** | “Çi qûlekî ku Xwedê wî li ser qewmekî ew kiribe berpirsiyar, dimire, roja ku dimire qewmê xwe xapandibe; xwedê cennetê li ser heram dike.” |
| 23 | **Fetwedana bêzanîn** | “Çi kesê bê zanîn fetwayê bide; gunehê wê li ser yê ku fetwa daye.” |
| 24 | **Terka nimêja Înê yan jî nimêja Esrê** | “Çi kesê nimêja sê înan ji bêîhtîmamîya pê terk bike; Xwedê li ser dilê wî mor dike” “Çi kesê nimêja Esrê terk bike emelê wî pûç dibe.” |
| 25 | **Sistayîya di nimêjê de û terka wê** | “Peymana di navbera me û wan de nimêj e, vêca çi kesê terka wê bike ew kafir dibe” “Di navbera zilam û şirkê de û di navbera zilam û kufrê de terka nimêjê ye.” |
| 26 | **Birêveçûna di ber nimêjkerî de** | “Eger yê ku di ber nimêja yê nimêjker de dibûre zanibana ka li serê çi guneh heye; ku ew çil salî li hêviya wî rawestaye çêtirbû jê re ku ew di ber re derbasbûya.” |
| 27 | **Eziyetdana nimêjkeran** | “Çi kesê pîvaz, sîr û kewer xwaribe bila nêzî mizgefta me nebin; lewra melaîket, tişta ademîzad jê nerehet dibîn ew jî jê nerehet dibîn.” |
| 28 | **Xespkirina erdekê** | “Çi kesê buhostek zevî bi zulm û sitemkarî dagirkiribê; Xwedê roya qiyametê bi heft tewq zevî dipêçe.” |
| 29 | **Gotina ku Xwedê hêrs dike** | “Birastî dema bende bi gotineke ku Xwedê hêrs bike bipeyive, hesabê tu gunehî jî neke; Xwedê heftê salî wî dixe dojehê de.” |
| 30 | **Xeberdana pir û bê zikir** | “Eger ku zikrê Xwedê nebê zêde neaxivin, lewra xebardana pir ku di nav de zikrê Xwedê nebê, dil hişk û req dike. |
| 31 | **Xeberdana pirzêde, qelew û qebe** | “Birastî ji we bi bal min ve yê herî hêrslêbûyî û roja qiyametê yê herî ji min dûr, ew ên ku di xeberdanê de **Sersarûn**, **muteşeddiqûn** û **mutefeyhîqûn** in. **Sersarûn:** Ew ê ku pir xeber didin û xeberdanê li hev dizîvirînin**. Muteşeddiqûn:** Ew ên ku xeberdanê dirêjdikin û ji hawîrdor peyvan tînin. **Mutefeyhîqûn:** Ew ên devê xwe bi peyvan tije dikin û xwe bi xeberdana xwe qure dikin. |
| 32 | **Bêhaybûna ji zikrê Xwedê** | “Çi civateke ku xelkek tê de rûne; zikrê Xwedê tê de nekin û li ser pêxemberê xwe selewatan nedin; li ser wan wetîreyek heye: Vêca eger Xwedê bivê wan dide ezabê û eger nevê wan dibexşîne. |
| 33 | **Kêfxweşiya bi musîbeta ku bi ser musilmanan de tê** | “Bi musîbeta musilmanan kêfxweş nebe, vêca Xwedê rehma xwe dê lêkê û te jî tûşî belayê bike” “Çi kesê birayê xwe yê musilman bi gunehekî eybdar bike; heyanî ku wî gunehî neke ew ê nemire .” |
| 34 | **Xeyda di navbera musilmanan de** | “Ji bo merevê musilman durist nîn e ku zêdeyî sê royan xwe ji birayê xwe yê musilman bixeydîne, ki zêdeyî sê royan xwe bixeydîne, vêca bimire; dikeve dojehê de.” |

| | | |
|---|---|---|
| 35 | Gunehkariya bi aşkeratî | "Tevekê umeta min têne bexşandin ji bilî yên ku gunehê xwe aşkera dikê." |
| 36 | Axlaqê nebaş | "Birastî axlaqê pîs emelî xerab dike çawa ku sirke hingûv xerab dike." |
| 37 | Ewê ku li dayina xwe poşman dibe | "Ew merevê ku li ya ku hîbe kirî vegere; mîna sehê ku vereşe, paşê li vereşandina xwe vegere" "Ji tu zilamî durist nîn e ku dayinekê bide yan jî tiştekî hîbe bike û paşê lêvegere." |
| 38 | Zilma cîran li ser cîranî | "Zilam ku bi deh jinan re zinê bikê li serê hêsantir e ku bi jina cîranê xwe re zinayê bike û ku ji deh malan diziyê bike li serê hesantir e ku diziya cîranê xwe bike." |
| 39 | Nezera heram (Meyzandina heram) | "Li ser zaroyê Adem nesîbê wî ji zinayê hatiye nivîsîn ku her ewê bigihiyê; Vêca zina çavan meyzandin e, zina guhan guhdarikirine, zina ziman xeberdan e, zina destan destdirêjkirine, zina lingan gavavêtin e, zina dil bijîn û hezkirin e, şermegeh jî wê rastdidêre yan jî derew derdixe; eger guhdariya nefsê bike dikevê gunehê û eger neke ew biserdikeve. |
| 40 | Ne durist e ku zilam dest bide jinê | "Eger ku şûjineeke hesinê di serê zilamekî de here jê re çêtir e ku dest bide jineke ku lê nehelal e" "Pêxember wiha dibêje: Ez bi destê pîrekeke nemehrem nagirim." |
| 41 | Zewcandina bi berdêlî ku mehr tê tunbe | "Pêxember hikaha şîğarê qedexe kiriye" **Şîğar**: Bav keçe xwe li yekî li nîkah bike li ser ku ew jî keça xwe li wî nîkah bike û di navbera wan de mehr tunebe. |
| 42 | Girî û lixwexistina li ser miriyam | "Çi miriyê ku li ser wesiyeta wî li serê şîn û girîn were kirin; roja qiyametê bi ya ku li serê hatiye şîn û girînkirin tête ezabdayîn" "mirî bi sebeb giriyê ku li serê têkirin di gora xwe de tête ezabdayîn, bi egera ku wî wesiyet kiribe." |
| 43 | Sondxwarin a bi xeynê Xwedê | "Çi kesê bi xeynî Xwedê sond bixwe; ew kafir dibê yan jî ji Xwedê re hevta çêdike" "Çi kesê ku bixwaze sond bixwe bila bi Xwedê sond bixwe yan jî bila neaxive" "Çi kesê bi emanetê (mîna nimêj, rojî, hec û xeynî wan) sond bixwe; ew ne ji bereka me ye. |
| 44 | Sonda bi derewkarî | "Çi kesê ku bi sondê perçeyek ji malê merevekî bigre û ku wî bi derew sondxwaribe; roja qiyametê tê huzura Xwedê û Xwedê li serê bihêrs e." |
| 45 | Di bazarê de sondxwarin | "Xwe ji sondxwarina di bazarê de dûr bigrin; lewra ew pêşî zêde dike û paşî bereketêdibe" "Sondxwarin, pertal dixe rewacê û bereketê jê dibe." |
| 46 | Şibandina bi kafiran | "Çi kesê xwe bişibîne qewmekê ew ji wan e" "Ew kesê bişibîne xeynê me ew ne ji me ye." |
| 47 | Çêkirina avahiyan li ser qebran | "Pêxember qedexekiriye ku gor bêne ceskirin û li ser wan were rûniştin û li ser wan avayî bête çêkirin." |
| 48 | Xedr û xiyanet | "Dema Xweda, roja qiyametê yê pêşîn û paşîn li hev kom dike; ji her xiyanetkerekî re alayek tê bilindkirin û tê gotin: ev xiyanetkariya felankesê kurê felakes e." |
| 49 | Rûniştina li ser qebran | "Eger ku yek ji we li ser perengê agir rûne, vêca kincê wî bişewitin heyanî ku bigihe cermê wî; jê re ev çêtire ku li ser qebran rûne." |
| 50 | Ew kesê bivê ku xelk ji ber rabe | "Çi kesê hezbike ku xelk bi hurmetkarî ji ber rabê; bila cihê xwe di êgir de amade bike." |
| 51 | Parsekiya nejihewcedarî | "Çiqas ku bende deriyê xwestekiyê veke xwedê li serê deriyê feqîrıyê vedike" "Çi kesê ji bo ku malê xwe zêde bike ji mirovan bixwaze; ancex ew ji xwe re perengê agir dixwaze, naxwe; bile hindik bixwaze an jî pir." |

| | | |
|---|---|---|
| 52 | **Di bazarê de nirxzêdekirina ne jibo kirînê** | "Bila bajarvanî mal ne firoşin koçeran (bi sedema ku ew ji bazarê neagahdar in)" "bila bi niyeta nekirînê bazarê li hev zêde nekin" "Bazara li ser bazarê nekin." |
| 53 | **Di mizgeftê de bankirina ji bo wendabûyan** | Çi kesê zilamekî bibîne ku di mizgeftê de ji bo tiştekî ku winda bûye gazî dike, bila bibêje:Xwedê wê li te venegerênê. Lewra mizgeft ji bo vê nehatiye avakirin. |
| 54 | **Dijûndayîna ji bo şeytan** | "Gotina bi şeytên nekin; lê belê ji xerabiya wî xwe bi Xwedê biparêzin." Yek ji sehaban dibê ez li pey pêxember bûm; defeha wî şemitî, vêca min got: Bimre şeytan yan jî mala wê xerabibe. Pêxember got: Wisa nebêjin; lewra dema te wisa got; şeytan mezin dibe heyanî ku dibe mina xaniyekî û dibêje ev bi hêza min bû. Lê belê bibêjin: Bi navê Xwedê. Dema we ev got; ew biçûk dibe heyanî ku dibe mîna mêşê. |
| 55 | **Behsa tayê bi nebaşî** (taya nexweşiyê) | "Gotinan ji bo tayê nedin; lewra ew gunehên ademîzadan li ser wan diwerîne çawa ku kûrika hedada zengê li ser hesinî dibe û paqij dike." |
| 56 | **Belavkirina tiştên heram û gaziya bal wan ve** | Çi kesê xelkê gazî bal rêşaşîyekê ve bike; bi qederê gunehên kesên ku dane pey wê rêşaşyê li serê guneh heye û ev ji gunehên wan jî tu kêmasiyê çênake. |
| 57 | **Qedexeyên di vexwarinê de** | "Pêxemberê Xwedê, vexwarina avê ji devê avdankê (mîna ku ji devê cer, surahî û misîn vexwe) qedexekiriye" "Pêxember vexwarina avê jipiya qedexe kiriye" "Pêxember pifkirina avê qedexe kiriye." |
| 58 | **Vexwarina di feraxên zêr û zîv de** | Di feraxên zêr û zîv de nexun û venexun, cilên hevrîşm û dîbac li xwe nekin; lewra ev li dinyayê ji bo kafiran e û li axretê ji bo we ne. (Dîbac: curek ji hevrişim e) |
| 59 | **Vexwarina bi destê çepê** | Zinhar, bi tu kes ji we bi destê çepê nexwe û bila pê nevexwe, lewra şeytan bi destê çepê dixwe û vedixwe. |
| 60 | **Qutbiriya girêdana xweditiyê** | Ew kesê benê xwedîtiyê bibire naçe cennetê (ku qenciyê li wan neke, seriyan li wan nede û rewşa wan nepirse). |
| 61 | **Terka selewata li ser Pêxember** | "perîşan û şerpeze be; ew kesê navê min li cem bête gotin vêca selatan li ser min nede" "Merevê bexîl ew kesa ye ku navê min li cem bête gotin vêca selata li ser min nede. |
| 62 | **Xwedikirina kûçikan** | "Çi kesê ji bilî sehê pez û nêcîrê sehekê xwedîke; vêca birastî her roj ji xêra wî di qîrat (mîna di çiyayê Uhudê) kêm dibe." |
| 63 | **Eziyetdana heywanan** | Jinikek, bi sedem ku pisîkek hepiskiribû heyanî ku pisîk mir hate ezabdayîn, vêca bi wê sebunetê ew jinik kete êgir de. |
| 64 | **Daleqandina zengil bi stuyê heywanan ve** | "Melaîket bi karwanekî ku tê de seh an jî zengil hebe hevaltiyê nakin" "Zengil saza şeytan e." |
| 65 | **Dema qencî ji yên gunehkar re bên dayîn** | Dema te dît ku Xwedê ji dinyayê dide mirovê gunehkar ya ew hezdike, vêca birastî ew îstidrac e. Paşê Pêxember ev ayet xwend: "***Êdî çi dema ew şîretên ku li wan hatibûn kirin ji bîr kirin, Me jî ji bo wan dergehên hemû tiştî vekirin. Heta bi ya ku ji wan re hatiye dilxweş bûn, îcar ji nişka ve me ew hingaftin (û helak kirin), vêca ji nû ve ew (ji xêrê) bêhêvî bûn***." **(En'am 44)** |
| 66 | **Pêşxistina dinyayê li ser axretê** | Çi kesê dinya armanca wî be; Xwedê feqîriya wî dixe nevbera herdu çavê wî de, rewşa wî jihevdixe û ji dinyayê ji bilî ya ku Xwedê jê re teqdîr kiriye tiştekî nadiyê. |

# RÊWÎTİYA EBEDÎYETÊ

## Rêya te ya diçe cennetê, yan jî diçe cehennemê!

*"Gelî yên ku îman anîne! Ji Xwedê bitirsin û bila her kes binêre ka ji bo sibê çi amade kiriye!"* ***Heşr 18.***

## Qebr:

Qûnaxa yekê ye ji bo axretê. Ew ji bo mirovê kafir û munafiq korteke êgir e. Ji bo mirovê mu'mîn jî bexçeyek e. Di qebrê de 'ezab ji bo hinek gunehan warid bûye. Hinek ji wan gunehan ev in: Xwe dûrnegirtina ji mîzê ye. Xwe dûrnegirtina ji gotegot û fitnê ye. Xîyanetkirina di xenîmeyan de ye. Derew e. Bi xewveçûnê mayîna ji nimêjê ye. Şemirandina Qur'anê ye. Zina ye. Lîwat e. Ribaxwerî ye. Venegerandina deyn li xwediyê wî ye. Ji bilî van hinek gunehên din jî hene. Tişta ku însên ji 'ezabê qebrê xilas dike jî: 'Emelê salih e, ewê ku xalis ji bo Xweda hatiye kirin. Bi dû'akirinê xwe parastina ji 'ezabê qebrê ye. Xwendina sûretê Mulk e. Ji bilî van hinek tiştên din jî hene. Ewê ku ji 'ezabê qebrê têne parastin jî ev in: Şehîd e. Ew kes e, yê ku di rêya Xweda de nobetê digre. Ew kes e, yê ku di roja înê de bimre. Ew kes e, yê ku bi nexweşîya zikêşê bimre. Ji bilî van hinekên din jî hene.

## Nefxa di sûrê de:

Ew quloçek û sitrhekî mezin e. Îsrafîl ew bi dest xwe girtiye û çavnêrî dike ka kengê emr dê li wî were kirin ku tê de pif bike. Nefxa tersê heye: "*Di bîra gelê xwe bîne **wê roja ku di sûrê de were pufkirin,** yên ku li erdê hene û yên ku li asîmanan hene **dibizdin**. Lêbelê yên ku Elllah bixwaze, ew netêde ne! Tev bi rebenî têne ber Xweda.*" *En-Neml 87*. Ew çax, kaînat hemû xirab û wêran dibe. Di piştî çilan de nefxa vejînê tê kirin. Lewra Xweda gotiye: "***Paşê careke din tê de tê pifkirin! Ji nişka ve ew jipiyan e, li encama xwe dinêrin.***"

## Be's/vejîn:

Paşê Xweda baranekê dişîne. Beden (ji hestiyê qurmedûvkê) hêşîn dibin. Ew dibin mexlûqekî nû ku êdî namirin. Pêxwas û tazî ne. Ew, melaîket û cinan dibînin. Ew li ser 'emelên xwe têne saxkirin û şandin.

## Heşr/kombûn:

Xweda ji bo hesabê, mexlûqatên xwe di rojeke mezin de kom dike ku miqdarê wê 50 hezar sal e. Ew her wekî serxweşan e, veciniqî ne. Her wekî ku mayîna wan ya li dinya'ya wan jî bûye saetek. Taveroj bi qasî mîlekê nêzî wan dibe. Însan bi qasî 'emelên xwe di xwêhdanên xwe de xerq dibin. Di wê rojê de bindest û serdest bihev dikevin. Mirovê kafir bi heval, şeytan û azayên xwe re pevdiçe. Hinek ji wan le'netê li hinekan tînin. Mirovê zulmkar destên xwe gez dike û bi 70'ê hezar hefsar ber bi cehennemê ve tê kişandin. Her hefsarek jî 70'ê hezar melaîket wî dikişînin. Dema mirovê kafir wê dibîne, ji dil û can dixwaze di ber xwe de fidye bide û xwe jê xilas bike, yan jî ew bibe ax û jê xilas bibe. Herçî gunehkar in, her wekî mirovên ku li ber zekatê asê dibin û wê nadin; malê wan dibe agir û ew pê têne daxdan. Mutekebbir (xwe mezinker) jî wekî mîroyan (wisan biçûk) têne heşrkirin û civandin. Xedirkar, xaîn û xesbkar jî (li pêşberî mirovan) têne riswakirin û hatikandin. Diz jî bi dizîya ku kirî re tê. Tiştên veşartî têne xuyakirin. Herçî mutteqî ne, ew (axret û rewşa wê) wan natirsîne û ew ji wan re her wekî dema nimêja nîvroyê (kurt) derbas dibe.

## Şefa‘eta mezintirîn:

Ew di roja Mehşerê de ji bo rakirina mûsîbet û hesabê mexlûqan bi awayekî xusûsî ji Peyxamberê me (Selat û selam li ser bin) tenê re heye. Ew bi awayekî umûmî jî ji bo Peyxamber (Selat û selam li ser bin) û dîgerên wî jî heye. Her wekî derxistina mu’mînan ya ji êgir û bilindkirina dereceyên wan.

## Hesab:

Însan sef bi sef li Xwedayê xwe têne eşkerekirin. Ew jî ‘emelên wan nîşanî wan dide û ‘emelên wan, ‘emrê wan, ciwanîya wan, malê wan, ‘îlmê wan, ‘ehdên wan, ni‘metên wan, ni‘meta guhên wan, çavên wan û dilên wan ji wan dipirse. Herçî kafir û munafiq in, Xweda li pêşberî mexlûqatan hesab ji wan dipirse. Da ku wan rûreş û riswa bike, delîlan li ser wan rake, însan, erd, roj û şev, mal, melaîket û azayên bedena wan li ser wan bibêjin û bibin şahid. Da ku sûcê wan sabit bibe û ew jî gunehê xwe îtîraf û îqrar bikin. Herçî mu’mîn e, Xweda wî bi tenê dikişîne hesabê, gunehên wî pê dide îtîrafkirin û îqrarkirin. Heta ew xwe wisan dibîne ku çûye helakê. Xweda jê re dibêje: “***Min li dinyayê sitara xwe avêtibû ser te û ew ji xelkê ve nihan kiribûn. Ez, îro jî wan ji te re ef û mexfîret dikim***.” Ummeta Mûhemmed beriya hemû ummetan hesabê xwe dibîne. Pêşîya hemû ‘emelan hesabê nimêjê tê pirsîn. Pêşîya hemû heqan jî hesabê xwînê (qetl û kuştinê) tê pirsîn.

## Tetayura sihûfan/weşandina defterên ‘emelan:

Paşê defterên ‘emelan têne neşrkirin û weşandin. Însan jî deftera ‘emelên xwe werdigrin: “***Lênivîs li rastê hatiye danîn. Tu dibînî ku wa ye sûckar ji ya ku tê de hatiye nivîsîn, bi tirs in û dibêjin: Wax li halê me be! Vê lênivîsê çawa yê piçûk, yê mezin çi kirinên me hebin, tiştek nehiştiye; her tişt jimartiye û tesbît kiriye!***” **Kehf 49.** Herçî mu’mîn e, deftera ‘emelên xwe bi destê xwe yê rastê werdigre. Herçî kafir û munafiq e, deftera ‘emelên xwe ji pişt xwe ve bi destê xwe yê çepê werdigre.

## Mîzan/şehîn:

Paşê Xweda ‘emelên mirovan bi mêzînê dikişîne. Da ku wan pê xelat, yan jî celat bike. Ew mîzaneke heqîqî û hûr e, du ferên wê hene. ‘Emelê ku miwafiqê Şerî‘etê be û xalis ji bo rizaya Xweda be, wê giran dike. Ji wan: gotina “لَا إِلَهَ إِلاَّ الله”, exlaqê xweş û zikr e, mîna gotina “سُبْحَانَ الله وَبِحَمْدِهِ سُبْحَانَ الله الْعَظِيم” e. Însan bi qencî û neqencîyên xwe bi hev re mehkeme dibin.

## Hewz:

Paşê mu’mîn diçin ser Hewz. Ewê ku jê vexwe, piştre hew tî dibe. Her peyxamber hewzekî wî heye. Hewzê ji hemû hewzan mezintir jî hewzê Mûhemmed (Selat û selam li ser bin) e. Ava wî ji şîr spîtir e. Ji hinguvîn şîrîntir e. Ji miskê paktir û bêhnxweştir e. Firaxên wî zêr û zîvî ne. Bi qasî hijmara stêran e. Dirêjahîya wî ji Eyle’ya Urdunê heta bi ‘Edenê dûrtir e. Ava wî ji çemê Kewserê tê.

## Îmtîhana mu’mînan:

Di roja dawîn ya mehşerê de kafir li pey wan pûtên xwe yên ku ew parastibûn, diçin. Ew jî wan kafiran kom bi kom digihînin agirê cehennemê. Ew her wekî kerîyên pez li ser lingên xwe, yan jî li ser rûyên xwe dimeşin. Li meydanê mu’mîn û munafiq bi tenê dimînin. Xweda tê cem wan û ji wan re dibêje: Hûn li benda çi

ne? Ew jî dibêjin: Em li benda Xwedayê xwe ne. Dema ew paqa xwe derdixe, ew wî nas dikin û jê re dikevin sicûdê. Lêbelê munafiq na! Çawa Xweda dibêje: "***Di bîra wan bîne wê roja ku devling tê hildan, gaziya sicûdê li wan tê kirin lêbelê; ew nikarin biçin sicûdê.***" *Qelem 42.* Paşê ew li pey Xwedayê xwe diçin. Ew Sîratê ji wan re diçikîne û nûrê dide wan. Nûra munafiqan jî dimevirîne.

## Sîrat:

Pireke li ser cehennemê dirêjkirî ye da ku mu'mîn di ser re derbas bibin û herin cennetê. Peyxamber (Selat û selam li ser bin) wiha salixên wê daye: "***Ew mirov dixe xwarê û dişemitîne. Li ser wê çengalên hesinî yên xwehro mehro û qenceyên wekî sitrîyên xurmeyan hene. Ew ji mû ziravtir e û ji şûr jî tûjtir e***." *Muslim.* Li cem wê sîratê bi qasî 'emelên wan nûr ji mu'mînan re tê dayîn. Çêtirînê wan nûra wî wekî çîyayan e. Kêmtirînê wan jî nûra wî di serê telîya lingê wî ya girê de ye. Ew ji wan re ronahiyê pêdixe û ew jî bi qasî 'emelên xwe di ser re derbas dibin. Mu'mîn heye ku bi qasî miçkirin û vekirina çavan, wekî birûskê, wekî bayê, wekî teyr, wekî hespên rehwal û wekî heywanê siwarbûnê di ser re derbas dibe. "***Mu'mîn heye ku bi selametî jê xilas dibe. Mu'mîn heye ku bi xerpişîn hatiye şandin û hinek jî hene ku di cehennemê de bi ser hev de têne werkirin.***" *Muttefequn 'eleyh.* Herçî munafiq in, ji wan re nûr û ronahî nîn e. Ew vedigerin û di navbera wan û mu'mînan de sûr têne danîn. Paşê ew hewl didin ku ji Sîratê derbas bibin, lêbelê di êgir werdibin.

## Agirê Dojehê:

Kafir dikevin êgir. Paşê mu'mînên gunehkar, paştir jî munafiq dikevin wî. Ji her hezar (1000) mirovan neh sed û not û neh (999) dikevin êgir. 7 dergehên êgir hene. Ew bi 70'ê caran ji agirê dinyayê dijwartir e. Bedena mirovê kafir tê de tê mezinkirin da ku 'ezabê te'm bike. Navbera herdu milên kêfir ewqas dirêj dibe, heta dibe her wekî mesafeya sê rojan. Diranê kêfir bi qasî çîyayê Uhûdê mezin dibin. Çermê wî tê mezinkirin û bi çermekî din tê guherandin da ku 'ezabê te'm bike. Vexwarina ehlê êgir ava ewqas kelandî ye ku rovîyên wan perçe perçe dike! Xwarina wan jî zeqqûm, xeslîn (xwîna ku ji laşê ehlê cehennemê tê) û şij û 'edab e. Di cehennemê de ewê ku 'ezabê wî ji yê tevan kêmtir e, ew kes e ku du pizotên êgir di bin lingên wî de têne danîn, ji ber dijwariya wan mejiyê wî dikele. Di cehennemê de çerm-şînbûn, helîn, şewitîn, kişkişîn, girêdana bi qeyd û zincîran heye. Kûrahîya wê zehf kûr e ku heke zarokekî nû çêbûyî tê de were avêtin, heta bigihîje binê wê ewê bibe 70'ê salî. Şewatek û ardûya wê kafir û kevir in. Hewa wê zehf germ e. Siha wê dûxan e. Cilên wê jî ji êgir in. Ew her tiştê dixwe, tiştekê nahêle û bernade. Ew hêrs dibe, bêhn berdide, çerman dişewitîne û digihîje dil û hestiyan.

## Qentere:

Peyxamber (Selat û selam li ser bin) gotiye: "***Mu'mîn ji êgir xilas dibin. Ew li ser qenterekê*** (navê cihekî ye, misliman lê li hev helal dikin) ***têne rawestandin ku dikeve navbera cennet û cehennemê. Li wir heqê neheqiyên ku hinekan ji wan li dinyayê li hinekan kiribûn têne standin. Paşê dema ew têne helandin û paqijkirin. Ji bo çûna cennetê destûr ji wan re tê dayîn. Ez bi wî sond dixwim ku nefsa Mûhemmed di destê wî de ye; yek ji wan mala xwe ya cennetê ji mala xwe ya dinyayê bêhtir nas dike û bi ser ve dibe.***" *Buxarî.*

## Cennet:

Ew hewîngeha mu’mînan e. Avahîya wê ji zêr û zîv e. Sewaxa wê ji miskê ye. Kevirên dîwarên wê ji lolo (sedef) û yaqût in. Axa wê ji ze‘feranê ye. 8 dergehên wê hene. Bereya dergehekî wê bi qasî mesafeya sê rojan e. Lêbelê bi îzdîhamê tije dibe. Di cennetê de 100 derece hene. Di navbera du dereceyên wê de bi qasî navbera erd û asîmanî mesafe heye. Dereceya wê ya ji hemûyan bilindtir Firdews e. Çemên cennetê ji wê dikişin û diherikin. Banê cennetê jî ‘Erşê Rehman e. Çemên wê hunguvîn, şîr, mey û av e. Ew bêyî co diherikin. Mu’mîn çawa bixwaze, wan wisan diherikîne. Xwarina wê daîmî ye, nêzîk û hêsan e. Di cennetê de konek heye, ji loloyan hatiye lêkirin, nava wî vala ye. Bereya wî şêst mîl e. Di her goşeyeke wî de ehlê wî hene. Ew ciwan in, hê mûyên wan şîn nebûne û çavkilkirî ne. Ciwanîya wan kal nabe û cilên wan jî hîç kevin nabin. Ji wan re mîz, gû û qirêj nîn e. Şehên wan zêrîn in. Xwêhdana wan misk e. Jinên cennetê sipehî, keç, hezkirî û hevsalî ne. Yekem mirovê ku biçe cennetê Mûhemmed (Selat û selam li ser bin) e. Piştî wî peyxamber in. Ji aliyê ni‘metan ve kêmtirîn ehlê cennetê çi xwezî û temennî bike, deh qatî wê jê re tê dayîn. Xizmetkarên cennetê wîldanên (ciwanên) nemir in, her wekî sedefên belavbûyî ne. Ni‘meta cennetê ya ji hemû ni‘metan mezintir jî dîtina Xweda, razîbûna wî û herûher mayîna li wê ye.

* **Têbînî**: Ew weqa‘etên mezin, yên ku mu’mîn, munafiq û kafir di wan de derbas dibe, peyapey diqewimin, heta ew digihîjin qûnaxa xwe ya dawîn!

# SALIX Û AWAYÊ DESTNİMÊJGIRTINÊ



**Destnimêj**, ku ne bi ava tahir be, ne caiz e. Ava tahir ew av e ku li ser eslê xulqbûna xwe dimîne. Yan jî ewa ku rengê wê, yan bêhna wê, yan jî te'ma wê bi tahir guherîbe. Her wekî wê ava ku ji ber ew demeke dirêj di cihê xwe de maye, guheriye. * Ava hindik, mirov hema tiştekî necis bavêje navê, necis dibe. Lêbelê ava zehf; kêm-zêde 210 lître ye, eger rengê wê, bêhna wê û te'ma wê neguherîbe, ew bi ketina tiştekî necis tenê ya nav wê de necis nabe!



**1. Destnimêj bi Besmelê (Bismillahirrehmanirrehîm) dest pê dike.** Di her destnimêjê de şûştina herdu destan musteheb e. Şûştina destan sê caran ji bo mirovê ku ji xewa şevê radibe, lazimtir e. * Dema mirov besmelê ji bîr bike jî destnimêja mirov sehîh e. Dema ew hê di esnaya destnimêjê de were bîra mirovî, mirov dê besmelê bibêje û venegere serî; ji nû ve dest bi destnimêjê neke.



**2. Paşê mirov careke tenê avê li devê xwe werdide. Lazim e ku mirov di devê xwe de avê tevbide û bigerîne. Musteheb e ku mirov avê sê caran di devê xwe de bigerîne.** * Di esnaya avlidev-werdanê de musteheb e, mirov miswakê jî li devê xwe werde. * Musteheb e, mirov bi çengeke avê, nîvê wê li devê xwe werde, nîvê wê yê din jî li pozê xwe werde.



**3. Paşê mirov careke tenê avê dikişîne pozê xwe. Lazim e ku mirov bi nefes-kişandin avê bikişîne jora kakerîkên bêhvila xwe. Musteheb e ku mirov vê jî sê caran bike.** *Ji bilî mirovê rojîgirtî; ji bo mirovên din musteheb e ku avê zêdetir li devê xwe werde û bikişîne pozê xwe.



**4. Paşê mirov rûyê xwe dişûyê. Ew bi berê xwe ji guh heta bi guh e, bi dirêjahîya xwe jî ji bin-mûyên kagulê heta bi binê erzenîyê ye.** * Wacib e ku mirov riha xwe ji hev derxîne; dema ew ne pirr himbiz be. Jihevderxistina wê musteheb e; dema ew pirr himbiz be. * Musteheb e ku mirov -bêyî îsrafkirin- di şûştina rû de avê zêdetir bikar bîne.



**5. Paşê mirov herdu destên xwe ji serê telîyan digel enîşkan dişûyê.** * Di şûştinê de pêşî şûştina rexê rastê beriya rexê çepê û delk û mizdana wan musteheb e. * Şûştina herdu mistan di destpêka destnimêjê de musteheb e. Di vir de jî wacib e.



**6. Paşê mirov zahirê serê xwe tevî mesih dike. Ji pêşîya kagulê heta bi şilka serê xwe. Paşê jî herdu destên xwe bi şûn de vedigerîne heta pêşîya serê xwe û tiştekê jê nahêle. Ew ji sînorê rû heta bi şilka serî ye. Paşê mirov herdu telîyên xwe yên şehdê dixe qulika guhên xwe û bi telîyên xwe yên benanekê/girê pişta guhên xwe mesih dike. Mirov guhên xwe çawa jî mesih bike, caiz e.**

* Mesihkirina pora ku zehf dirêj û rast be, ne wacib e. * Dema pora yekî nebe, ewê çermê serê xwe (şûna porê) mesih bike. * Mesihkirina wî çermê spî yê di navbera guhan û porê de jî lazim e. Lewra ew jî bi ber sînorê serî dikeve. * Ji carekê zêdetir dubarekirina meshê mekrûh e. * Digel ku çêdibe jî; şûştina serî ji ber mesihkirina wî ve mekrûh e.



**. Paşê mirov herdu lingên xwe digel gûzekan dişo.** * Musteheb e ku mirov lingê astê beriya lingê çepê bişo û herduyan delk bike û miz bide.

**Tertîb, di navbera azayên destnimêjê de şert e. Mirov pêşî bi avlidev-werdanê dest pê dike. Avê li pozê xwe werdide. Rûyê xwe dişûyê. Paşê herdu destên xwe dişûyê. Paşê serê xwe mesih dike. Paşê herdu lingên xwe dişûyê. Pevre-şûştin, di navbera wan de jî şert e. Yanî bila mirov şûştina azayekî texîr neke, heta azayê beriya wî ziwa bibe.**

*Di piştî destnimêjê de ziwakirina azayên destnimêjê bi destmalekê mûbah e. Lêbelê terka ziwakirinê çêtir e. *Weşandina avê ji azayên destnimêjê mekrûh e.

* Destnimêj bi şûştina hemû azayên xwe ya careke tenê ne sehîh e. Her wekî ku mirov xwe di birk û hewzekî de noq bike û nîyeta destnimêjê bîne!

* Sunnet e ku mirov di piştî destnimêjê de jî bibêje: أَشْهَدُ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ وَحْدَهُ لاَ شَرِيكَ لَهُ وَأَشْهَدُ أَنَّ مُحَمَّداً عَبْدُهُ وَرَسُولُهُ
*"Ez şehdeyiyê didim ku ji Xwedê pê ve tu mabûdê heq tun in û ez şehdeyiyê didim ku Muhemmed evdê wî û qasidê wî ye"* Di piştî destnimêjê de jî sunnet e ku mirov du rek'et nimêja sunnet jî bike.

# SALIX Û AWAYÊ NİMÊJKİRİNÊ



**Dema mirov rabe qesda nimêjê bike, bi gotina “اللّٰهُ أَكْبَرُ” dest pê dike. Îmam bi eşkerehî wê û tekbîrên din jî dibêje. Da ku me’mûmîyên li pey wî wê bibihîzin. Ji bilî îmamî, mirovên din wê bi dizîkahî dibêjin. Mirov li cem destpêka tekbîrê telîyên xwe bi hev ve dike û herdu destên xwe heta bi dehma herdu milên xwe radike. Dema îmam tekbîra xwe temam bike, me’mûmî ji nû ve tekbîra xwe tîne.**

* Wacib e ku nimêjker li cem tekbîra îhramê tam jipiya be. Tekbîranîn ji mirovê xwe tewandî û mirovê rûniştî ne sehîh e; meger ew nikaribe rabe jipiya, hingê ew xem nake. * Wacib e ku mirov di rukn û wacîbatê qewlî de heta di nimêja ku fatîhe bi dizîkahî tê xwendin de jî bi qasî ku nefsa wî wê bibihîze, wê bi eşkerehî bixwîne. Kêmtirînê bi dizîkahî xwendinê jî ew e ku mirov bi xwe dengê xwendina xwe bibihîze.



**Bila nimêjker bi destê xwe yê rastê kef, yan jî mista destê xwe yê çepê bigre. Bila herdu destên xwe jî di bin singa xwe de bigre. Bila çavên wî li cihê sicûda wî binêrin. Paşê bila xwendina xwe bi hinek dû‘ayên ku di sunnetê de hatine, dest pê bike. Paşê bila “E‘uzû”yê bixwîne. Paşê bila “Besmelê” bixwîne. Bila dû‘ayên îstiftahê, E‘uzû û besmelê bi eşkerehî nexwîne. Paşê bila fatîhê bixwîne. Paştir bila ji Qur’anê çi zanibe, wê bixwîne. Îmam, di herdu rek‘etên sibehê û herdu rek‘etên pêşîn yên nimêjên mexreb û ‘eşayê de jî fatîhe û demma sûretî bi eşkerehî dixwîne. Di dîgerên van de jî bi dizîkahî dixwîne.**

* Di rek‘etên ku di wan de fatîhe bi eşkerehî tê xwendin de, li ser me’mûmî xwendina fatîhê û tiştekî din ne wacib e. Lewra îmam wê mesûlîyetê ji ber wî ve hildigre. Lêbelê musteheb e ku me’mûmî di rawestek û sekinatên îmamî de fatîhê bixwîne. * Her wekî ku di Mûshefê de jî hatiye rêzkirin, musteheb e ku mirov ji tertîba sûretan bixwîne. Berevajîya tertîbê mekrûh e. Berevajîkirina tertîba kelîmeyan di ayetekê de, yan jî ya ayetan di sûretekî de heram e!



**Paşê nimêjker tekbîr tîne, herdu destên xwe radike û diçe rikû ‘ê. Herdu destên xwe jî datîne ser herdu kabên xwe, her wekî ku bi wan girtibe. Telîyên xwe ji hev vedike. Pişta xwe dirêj dike û serê xwe jî tîne dehma wê. Paşê dibêje: ” سُبْحَانَ رَبِّيَ الْعَظِيمِ - Ez Xwedayê xwe yê mezin ji hemû ‘eyb û nuqsanîyan pak didêrim.” Careke tenê gotina vê dû‘ayê mekrûh e. Kêmtirînê mukemmelîyeta wê sê car e.**

* Teleffuzkirin û bilêvkirina “tekbîr” û “semîellah”ê di esnaya întîqalê de wacib e. Di beriya întîqalê û piştî wê de jî ne sehîh e. Lewra ew, cihê ‘emelekî din e. * Miqdarê gihiştina rikû‘ê ew e ku bikare bi herdu mistên xwe herdu kabên xwe bigre. * Nimêjker bi rikû‘ê digihîje rek‘etê. Ji bo ev rek‘eta mirov tam û nenuqsan be; lazim e ku mirov beriya îmam serê xwe ji rikû‘ê rake, pê re bigihîje rikû‘ê.. * Mekrûh e ku mirov di rikû û sicûdê de Qur’anê bixwîne. Lêbelê eger meqsûda wî bi xwendina wê dû‘a be, ew zirar nake. Her wekî ku vê ayetê: “ رَبَّناَ آتِناَ فِي الدُّنْياَ حَسَنَةً وَفِي الآخِرَةِ حَسَنَةً وَقِناَ عَذاَبَ النَّارِ ” “Perwerdegarême di vê cihanê de rindîyê û di axretê de rindîyê bide me û me ji azara êgir biparêze” bixwîne.



**Paşê nimêjker, serê xwe ji rikû‘ê radike û dibêje: ”سَمِعَ اللهُ لِمَنْ حَمِدَهُ“** “Ewê ku hemdê Xweda bike, Xweda ji wî qebûl bike!” **û herdu destên xwe jî radike. Dema jipiya tam rast bibe, ewê bibêje:**

" رَبَّنَا وَلَكَ الْحَمْدُ، حَمْداً كَثِيراً طَيِّباً مُبارَكاً فِيهِ مِلْءَ السَّمَاوَاتِ وَمِلْءَ الأَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا، وَمِلْءَ مَا شِئْتَ مِنْ شَيْءٍ بَعْدُ "

**“(Hey) Perwerdegarê me! Pesn her ji te re be. Pesnekî pir, rind, bi xêrûbêr. Bi qandî dagirtina asimanan û zemînê û herçi tişta di navbera wanda û bi qandî da- girtina ji tişta ku tu hê bixwazî.”**

* Nimêjker, heta ji rikû‘ê tam ranebe û pişta wî tam rast nebe, nabêje: “Rebbena Welekel hemdû.” Ew beriya tam piştrastbûnê jî dest bi wê nake. Lewra cihê wê piştî qîyamê, rabûnê ye. * Lefzên tehmîdê (hemdkirinê) çar in. Ew bi awayekî sehîh ji Pêxamber (*selat û selam li ser bin*) hatine rîwayetkirin. Ew jî ev in: 1- Rebbena! Welekel hemdû. 2- Rebbena! Lekel hemdû. 3- Ellahumme, Rebbena! Welekel hemdû. 4- Ellahumme, Rebbena! Lekel hemdû. Di navbera wan rîwayetan de tenw‘îkirin (her carekê yek ji wan xwendin û gotin) jî musteheb e.



**Paşê nimêjker, tekbîr tîne û dikeve sicûdê. Ewê herdu zendên xwe ji teniştên xwe, zikê xwe ji rehnên xwe û rehnên xwe jî ji paqên xwe dûr bixe. Ewê herdu destên xwe jî li dehma herdu milên xwe deyne. Ewê li ser terefên lingên xwe be û berê telîyên lingên xwe û pêçîyên destên xwe jî bide rexê qiblegehê. Paşê jî ewê bibêje: “** سُبْحَانَ رَبِّيَ الأَعْلَى ”(Ez Xwedayê xwe yê bilindtirîn ji hemû ‘eyb û kêmasîyan pak didêrim!) **Sunnet e ku nimêjker sê caran wê bibêje. Nimêjker dikare ji sê caran zêdetir jî wê bibêje. Ew dikare hinek dû‘ayên ku di bara wê de hatine jî bixwîne.**

* Wacib e ku sicûd li ser her heft azayên nimêjkerî pêkwere: Terefên herdu lingan, herdu kaban, herdu mistan, enî û bêhvilê. Bi qesdî terkkirina sicûdê li ser hinek azayan nimêjê betal dike.



**Paşê nimêjker, tekbîr tîne û serê xwe ji sicûdê radike û rûdine. Du awayên sehîh yên rûniştina di navbera herdu sicûdan de hene. 1- ewê lingê xwe yê çepê razîne û li ser wî rûne. Lingê xwe yê rastê jî di erdê de biçikîne û berê telîyên xwe jî bide aliyê qiblegehê. 2- ewê herdu lingên xwe di erdê de biçikîne, berê telîyên xwe bide rexê qiblegehê, li ser herdu pehnîyên xwe rûne û ewê sê caran bibêje: “** رَبِّ اغْفِرْ لِي ” (Xwedayê min! Gunehên minbibexşîne.) **Ew dikare li vê dû‘aya xwe van peyvan jî zêde bike:** “وَ ارْحَمْنِي، وَ اجْبُرْنِي ، وَ ارْفَعْنِي ، وَ ارْزُقْنِي، وَانْصُرْنِي ، وَ اهْدِنِي، وَ عَافِنِي، وَاعْفُ عَنِّي ” (Li min were rehmê, kêmasîyên min temam bike, cihê min bilind bike, rizqê min bide, arîkariya min bike, minrasterê bike, min paqij bike û min efû bike). **Paşê ewê her wekî sicûda pêşî here sicûda duyem jî. Paşê ewê serê xwe ji sicûdê rake, tekbîr bîne û ewê li ser serê lingên xwe rabe jipiya. Ewê rik‘eta duyem jî her wekî ya pêşî nimêj bike.**

* Heta nimêjker tam ranebe jipiya fatîhê naxwîne. Lewra cihê fatîhe-xwendinê qîyam e. Eger ew hê tam ranebûyî jipiya fatîhê bixwîne, piştî ku ew tam rabe qîyamê divê ji serî ve dîsa xwendina fatîhê îade bike. Heke xwendina wê îade neke, hingê nimêja wî betal dibe!



**Dema nimêjker ji herdu sicûdan vala bibe, ewê bi awayê îftîraşkî (piyê çepê razîne û piyê rastê di erdê de biçikîne) ji bo teşehhudê (tehhîyat-xwendinê) rûne. Ewê destê xwe yê çepê deyne ser rehnê xwe yê çepê û destê xwe yê rastê jî deyne ser rehnê xwe yê rastê. Ewê ji telîyên xwe ya qelîç û bapelîçê bigre. Ewê ji telîyên xwe ya benanek/girê digel ya navê bixe heleqe. Ewê bi telîya xwe ya şehdê jî îşaret bike û di teşehhudê de bibêje: “**التَّحِيَّاتُ الْمُبَارَكَاتُ الصَّلَوَاتُ الطَّيِّبَاتُ لِلَّهِ...” **Paşê ewê tekbîr bîne û ji bo rek‘etên sêyem û çarem jî rabe qîyamê. Ewê destên xwe rake û her wekî şiklê ku derbas bû, nimêja xwe temam bike. Lêbelê ew di wan de bi eşkerehî fatîhê naxwîne. Ewê fatîhê tenê bi dizîkahî bixwîne û piştî wê sûretan jî nexwîne.**




**Paşê nimêjker, ji bo teşehhuda dawîn bi awayê Tewerrukî (piyê xwe yê rastê diçikîne, piyê xwe yê çepê di bin wî re derbas dike) rûdine. Rûniştina dawîn jî sê awayên wê yên sehîh hene. Ew bes di teşehhuda dawîn de di wê nimêja ku du tehîyyat-xwendin tê de hene, bi awayê tewerrukî rûdine.**
**Paşê ew di teşehhudê de dibêje: “...**التَّحِيَّاتُ الْمُبَارَكَاتُ الصَّلَوَاتُ الطَّيِّبَاتُ لِلَّهِ ” **Paştir selatan li ser peyxamber dide û dibêje: “...**اَللَّهُمَّ صَلِّ عَلَى مُحَمَّدٍ وَعَلَى آلِ مُحَمَّدٍ ”. **Paşê jî ew çi dû’ayê bixwaze, wê ji xwe re dike. Awayê tewerrukê: 1-** piyê çepê radizîne û wî ji rastê xwe ve di bin paqa xwe re derdixe, piyê xwe yê rastê diçikîne û kemaxên wî li ser erdê ne. **2-** Heman awa ye. Lêbelê piyê xwe yê rastê jî radizîne û wî di erdê de naçikîne. 3- Heman awa ye. Lêbelê piyê xwe yê çepê di bin paq û rehnê xwe de datîne.

➤ Musteheb e ku di vir de hinek dû‘ayên ku warid bûne, bixwînе. Yek ji wan dû‘ayan ev e: ”اَللَّهُمَّ إِنِّي أَعُوذُ بِكَ مِنْ عَذَابِ الْقَبْرِ،وَمِنْ عَذَابِ جَهَنَّمَ، وَمِنْ فِتْنَةِالْمَحْيَا وَالْمَمَاتِ، وَمِنْ شَرِّ فِتْنَةِ الْمَسِيحِ الدَّجَّالِ“ “Xwedayê min! Birastî ez xwe ji ber azara gorê û ji ber azara dojê û jiber ceribandina jiyan û mirinê û ji ber felaketa deccalê çavbirû re misêwakirî xwe davême bextê te.”



**Paşê nimêjker, du selaman dide. Ewê li milê xwe yê rastê bifetile û bibêje: Esselamû ‘eleykum werehmetûllah. Ewê wisan li milê xwe yê çepê jî bifetile û bibêje: "**اَلسَّلاَمُ عَلَيْكُمْ وَ رَحْمَةُ اللهِ **" Dema ew selam bide, ewê hê di cihê nimêja xwe de rûniştî, dû ‘aya ku warid bûye, bixwîne.*** Li cem selamdayînê ku bi rexên rast û çepê ve lebitandina destan, yan rakirina wan û paşê jî danîna wan mekrûh e.

# ÎLM (ZANÎN), EMELPÊKİRİNÊ DİXWAZE

'Îlmê bê'emel li cem Xweda, peyxamberê wî û mu'mînan nayê hezkirin. Lewra Xweda dibêje: "*Gelî yên ku îman anîne! Ya ku hûn nakin çima dibêjin? Ji aliyê hêrsê ve li cem Ellah pirr mezin e ku hûn tişta nekin, bibêjin!*" Sef 2-3.

**Ebûhureyre** (Xweda jê razî be) **dibêje:** 'Îlmê ku pê 'emel neyê kirin, her wekî wê xizînê ye ku di rêya Xweda de jê înfaq nayê kirin!

**Fudeyl** (Xweda jê razî be) **dibêje:** 'Alim, heta bi 'îlmê xwe 'emel neke, ew her cahil e.

**Malik kurê Dînar** (Xweda jê razî be) **dibêje:** Zilam heye ku tu wî dibînî, ew herfeke tenê jî şaş nake. Lêbelê 'emelê wî tev şaş e!

**Birayê misliman, xweha misliman! Xweda xwendina vê kitêba hêja ji te re hêsan û bi qismet kir. Fêkîyê xwendina te maye. Ew jî 'emelkirina bi 'îlmê tê de ye.**

* Tu hînî hinek ayetên Qur'anê û tefsîra wan bûyî. Ji dil û can hewl bide ku tu bi me'neya wan ayetên ku hîn bûyî 'emel bikî. Lewra sehabîyên resûlê Xweda (Selat û selam li ser bin) deh ayet ji peyxamberê Xweda hîn dibûn û deh ayetên din ji xwe re nedigirtin. Heta 'îlm û 'emelê ku di wan de hebû tam hîn nebûna. Wan digot: Em 'îlm û 'emel hîn dibin. Çawa ku Şerî'et jî vê teşwîq dike. Îbn'ebbas di bara vê ayetê: "*Wekî ku divê were xwendin, kitêbê wisan dixwînin*" Beqere 121; de dibêje: Ew bi awayê lazim li pey wê diçin.

**Fudeyl** (Xweda jê razî be) **dibêje:** Qur'an hatiye xwarê sirf da ku pê were 'emelkirin. Vêca mirovan xwendina wê ji xwe re kiriye 'emel!

Tu hînî hinekê ji sunneta Peyxamber (Selat û selam li ser bin) jî bûyî. Lezê li bersivdana wê bike û pê 'emel bike. Lewra salihên Ummetê, hînî çi bibûna, di tetbîqkirina wê û teblîxkirina wê ya ji bo mirovan de bi hev re musabeqe û pêşbazî dikirin. Wan ev fermana Peyxamber (Selat û selam li ser bin) tanî cih: "*Dema ez bi kirina tiştekê emr li we bikim, bi qasî ku hûn karibin, wî bikin. Lêbelê dema ez tiştekê li we qedexe bikim, xwe tam jê dûr bigrin!*" Muttefequn eleyh. Ew ji îqaba Xweda jî ditirsîyan. Lewra Xweda dibêje: "*Ji ber vê yekê, bila ewên ku li hemberî fermana wî tevdigerin, xwe ji belayekê biparêzin ku ewê were serê wan, yan jî ji 'ezabekî cansoj ku ewê dest li wan bixe!*" Nûr, 24/63.

## ÇEND NİMÛNE Jİ 'EMELKİRİNA Bİ 'ÎLMÊ:

* Dêya mu'mînan, Ummuhebîbe (*Xweda jê razî be*) ev hedîs rîwayet kiriye: "*Kî di şev û rojê de diwazdeh rek'et nimêja nafîle bike. Bi wan, li cennetê ji wî re malek tê avakirin.*" Muslim rîwayet kiriye.

**Ummuhebîbe** (Xweda jê razî be) **dibêje:** Ji dema min ew ji peyxamberê Xweda (Selat û selam li ser bin) bihîstine û vir ve, min hîç terka wan nekiriye.